# TESEWWUF

## Ji Îmanê Ber Bi Îhsanê Ve

**Osman Nûrî TOPBAŞ**




WEŞANÊN ERQEM

# TESEWWUF

**Ji Îmanê Ber Bi Îhsanê Ve**

Osman Nûrî Topbaş

| | |
|---|---|
| **Navê Resen:** | Îmandan İhsâna Tasavvuf |
| **Nivîser:** | Osman Nûrî Topbaş |
| **Wergêr:** | Mehmet Seyhan<br>[Mela Muhemmedê Bêrkevanî] |
| **Rastker** | Abdusselam Kartal<br>[Mela Ebdusselamê Bêcirmanî] |
| **Qordînator:** | Muhammed Davuthan Kılıç |
| **Grafiker:** | Rasim Şakiroğlu |
| **ISBN:** | 978-605-302-352-4 |
| **Navnîşan:** | Ikitelli Organize Sanayi Bölgesi Mah.<br>Atatürk Bulvarı, Haseyad 1. Kısım No:<br>60/3-C Başakşehir,<br>Istanbul, Turkey |
| **Tel:** | (+90-212) 671-0700 pbx |
| **Fax:** | (+90-212) 671-0748 |
| **E-mail:** | info@islamicpublishing.org |
| **Malpera Webê:** | www.islamicpublishing.org |
| **Sertifika çapê:** | Weşanên Erqem |
| **Language:** | Kurdish |

WEŞANÊN ERQEM




**"Ji bo heqê ulûhîyyeta Zatê min; bi Taverojê û ronahîya wê ya di danê sibehê de, bi Heyvê dema ew Taverojê taqîb dike û bi Naverojê dema wê derdixe ber xuyahîyê, bi Şevê dema wê dinixumîne, bi Asîmanî û Yê ku ew ava kiriye, bi erdê û yê ku ew weşandiye û raxistiye, bi nefsê û yê ku hinek qabilîyet dane wê û qencî û neqencîyên wê** (ficûr û teqwaya wê) **jê re îlham kirine, SÛND BE KU;**

**Kî nefsa xwe ji xirabîyên wê** (ji qirêjên maddî û manewî yên wê) **temîz bike hemin bi xilasîyê gihaye; ewê ku ew di xirabîyan de jî noq kiribe helbet li xusranê ketiye.**" [1]

Sûndxwarina Cenabê Heq, digel ku qîmet û şerefa heyberên ku bi wan sûndxwarî dide zanîn jî, lêbelê di esilê xwe de ji bo şanîdana mezinatî, ezamet û giringîya ğaye û mirada îlahî ya ku di piştî wê sûndê de hatiye îfadekirin, e. Di sûndên di van ayetan de jî rewş û hal wiha ye.. Lêbelê bi ferqekê ku;

Cenabê Heq, di van ayetên pîroz de li ser hev tam heft caran sûnd dixwe, piştre jî ji bo maneyê hîn xurttir bike, daçeka قد (bêşiwar) bikartîne, û bes di piştî van tekîd û teyîdan de vê heqîqetê dide zanîn:

**«Kî nefsa xwe ji xirabîyên wê paqij û temîz bike, bêşiwar ewê xilas bibe; bi berevajî vê kî nefsa xwe bi guneh û masîyetan bilewitîne jî bêşiwar ewê li xusranê bikeve...»**

Caliba diqqetê ye ku Cenabê Heq di Qur'ana Kerîm de ji tezkîya nefsê pê ve hîç di ti mijarekê de li ser hev heft caran sûnd naxwe. Ev heqîqet jî, ji bo îfadekirina vê têrê dike ku ji bo xilasîya însanî tezkîya nefsê çi qeder giring û zerûrî ye.

Ha bi vê berhema bi navê "**Tesewwuf Ji Îmanê ber bi ve**" ku me li qelemê daye, me hewl daye vê heqîqeta Qur'anî ya dostên Heqq, sipehîtîyên peyv, hal û bizavên wan, îzah bikin.

---

1. Şems, 91/1-10.

# PÊŞGOTIN

Hemd û senayên bênîhayet ji Cenabê Heqq re ne!; ewê ku ji rûhê xwe di însanî de pif kiriye, kûrahîya tefekkureke metafîzîk û tehessus jê re bexş kirine.

Selat û selamên bênîhayet li ser bendeyê Xuda û pêğemberê Xuda Mezinê me Fexrê Kaînatê, li ser alê wî, li ser eshabê wî û li ser etba'ên wî bin!; ewê ku Cenabê Heqq ew ji hêla kûrahîya vê tefekkur û tehessusê ve jî ji bo tecellîyên mûkemmeltirîn bi mezher kiriye û ew ji bo temamê beşerîyetê wek şexsîyetekî nimûneyî bexş kiriye.

Hîç şubhe nîn e ku tesewwuf, jîyana dilî ya Îslamê, rasteqîneya wê û alîyê rûhanîyê wê ye. Yanî Îslam, bi taybetî ev rasteqîne û rûhê di naveroka wê de, ji ber ku bi sebeb di însanên bi-îstîdad de bi amelê werdigere, wesfên rûhanîyet, feyz, mehebbet û wecda di dilên mûmîn de bi zirwe dibin. Maneya vê; tesewwuf, ji hêla ber û fêkîyê dara mezina îlm û îrfana di bağê Îslamê de jî bûye yek ji berhemdartirîn çiqilan. Çawa heta îro di bara tesewwufê de çendîn berhemên ciwan hatine nivîsîn ku:

-Zêdetir ji bo erbabên tefekkura bilind û kûr (ji bo xewasan),

-Hem ji bo xewasan, hem jî ji bo girseyên fereh ên gel (ji bo ewaman),

-Pêşîya her tiştî çendîn berhemên ciwan hatine nivîsîn ku ji ewaman re xîtab dikin.

Hinek ji van berheman, di sewîyekeke wisan bilind de hatine li qelem dan her wekî *Fusûsû'l-Hîkem*[2] *û Însanê Kamil*[3] ku sade erbabên tefekkura bilind û kûr wan fehm bikin. Hinek ji wan jî her wekî *Mesnewî*'ya Mewlana di naverok û mûhtewayeke wisan weset de hatine nivîsîn ku cihbicih ji mejîyê mûtefekkiran re û cihbicih jî ji girseyên gel re xîtab dikin. Ev cure berhem ji bo vê ne, ku ew mirovên îlmên zahirî yên xwe temam kirine di mûhtewaya malûmatên xwe de wek hê bêhtir ji feyz û tefekkureke manewî û derûnî ya ferehtir re ram û desteberbûyî bi Heqq, heqîqet û marîfetûllahî'yê nail bibin. Li cem van karpêkan hinek berhem û kitêbên tesewwufî yên din jî hene ku

2. Ya Îbnûl-Erebî, yê ku di sala 124an de wefat kiriye.
3. Berhema Ebdûlkerîm el-Cîlanî yê ku di 1403'êyan de wefat kiriye .

hatine nivîsîn û ew ji girseyên fereh ên gel re xîtab dikin her wekî *Enwarû'l-'Aşiqîn*[4], *Mûhemmedîyye*[5] û *Nefehatû'l-Uns*[6].. Emanca van cure berheman gihandina wan girseyên qerebaliğên gel bi sewîyekeke mûmkin û bi tekûzî û mûkemmelîyeta hest, îdrak û bizavê ye ku karîne rasteqîneyên şer'î fehm bikin.

Ev fereh-cureyî ya di berhemên tesewwufî de, emanca wê mûkemmelîyeta Îslamê bi awayekî ji naveroka fereha wê re layiq bi ewam û xewas ên ku di nav civakê de hene bide fehmkirin û dîrayeta tetbîqkirina wê bi wan bide qezenckirin lêbelê ya her yekî ji wan bi qasî îdrak û îqtîdara wî dibe.. Însanên wiha bi tabîra mirovên berê zu'l-cenaheyn yanî du bask dibin.

Tesewwuf bi van hemû alîyên xwe ve ji her beş û çînîyên civakê re diaxive, rexawet û sistahîyên di zemanên rehetîya abûrî û civakî de asteng dike, zindîtî daye dewamkirin, ji bo dilên ku hem di serdemên dagirkerîyê de, hem jî di serdemên ji zulim û zordestîyê tije de di navbera teşqele û buhranan de tengav bûne, pencereyên ulwî vekirine, kiriye ku ew hilm û nefesê bistînin; ji dilên birîndar re bûye merhem, ji bo mejîyên westiyayî bûye tesellî û hedan û ji bo gîyanên hişk û ziwa bûye kewser.. Tesewwufê, ji alîyekî ve tewazû û mehwîyetê li mirovên ku di exlaqê xweş û îbadetê de bi zirwe bûne, telqîn dike, şîret dike, wê ew ji ğurûr, serxweveçûn, kibr û ucbê (xwe ecibandinê) dane parastin. Ji alîyekî din ve jî wê ji bo bendeyên ku di konçala gunehan de dikirin bixeniqin jî kemberên rizgarîyê yên fereh ên her wekî ef, mûsameha, merhemet û rahmê dirêj kirine.. Çawa ev heqîqeteke tarîxî ye; di piştî îstîla'ya Moğolan de teşqele û karesatan temamê Anadolê dabû ber xwe û bêhizûrî, êş û jan derxistin holê. Vêca di wê serdemê de wek teskînkar û tesellîkar herk û cereyanên tesewwufî hêz û qewet qezenc kirin û gellek mûtesewwif jî derketin holê..

Îro jî temamê beşerîyetê ber bi ger û girdaba bêhizûrîyeke dehşetdar û êş û janên curecur ve hatiye kişkişandin. Ti kes nikare înkar bike ku di zemanê wiha de îhtîyac bi ciwanî û xesletên tesewwufî heye da ku şîfayê ji dilan re bexş bike. Birayên me yên ku hê nû ji pençên ateîzmê û nîrê îlhadê xilas bûne wekî "çûkê birîndar" in, îhtiyaca wan bi tedawîya manewî heye. Gîyan û dilên wan di vê naverokê de ji ava jîyanê re telebkar in. Çawa ew mirovên ku gîyanê wan ji materyalîzmê bêzar bûne jî çi li rojhilat bin, çi jî li rojava bin, di serê

4. Ahmed Beycan ku di sedsala 15'an de jîyaye.
5. Mûhemmed Yazicioğlu ku di sala 1541 de wefat kiriye.
6. Ya Ebdûrrahman el-Camî yê ku di sala 1492'yan de wefat kiriye.

pêşî de Îslamê ji cazîbe û ciwanîyên mûtesewwif ên mezin nas dikin, bi wan jê hez dikin û di dawîyê de bi awayekî sağlem û asê xwe bi dînê mûbîn digrin..

Ev hemû şanî didin ku tesewwuf, bi pêkhatin û naveroka derûnî ya fereha xwe di dest ehlê îmanê de ji bo tecellî, feyz û gihana îslamî nîmeteke jêneger e. Bi vê nêrînê tesewwuf, hem ji bo mislimanan bi kemalê bigihîne, hem jî ji bo ji hîdayeta ğeyrê misliman re bibe wesîle û ji bo îslamê bi awayekî rast û durust ji wan re bide xuyakirin, giringîyeke zehf mezin erz dike..

Lewra tesewwufa rastîn, ji ayneyeke dilî îbaret e ku dan şanîdana jîyana pîroza Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- heta qiyametê ji sedsal û nifşên ku werin re dabîn û temîn bike.

Ji ber ku wiha ye, feyz û mehebbetên pîroz ên Cenabê Heqq û Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di dirêjahîya sedsalan de di dilan de di nav heman zindîtî û tazetîyê de hatiye jîyîn, dijîn û ewê her bijîn.

Ji ber ku wiha ye Îslam, îro digel ku misliman bi maddîyata xwe lawaz û zeîf in jî dîsa ew bi awayekî xurt hebûna xwe û bandora xwe dide dewamkirin.

Ji ber ku wiha ye dijminên bidizî û eşkere yên Îslamê wekî ku rûh û bedenê ji hev cuda bikin aynî wisa bi ferfitinî û neçarane hewl didin tesewwufê wekî sîstema têgihiştineke ji îslamê cuda, şanî bidin. Ji lewma ew mirovên ku meselê nizanin, ji ber ku dibe werin xapandin û ber bi mûxalefetê ve werin kişkişandin, bûye zerûreteke zehf giring ku heqîqetên tesewwufî her dem bi awayekî rast û durust werin zimên û îfadekirin û têgihiştinên şaş jî werin sererastkirin. Helbet sade ne bi vê zerûretê, lêbelê ew ciwanî û sipehîtîyên ku me li jorê behsa wan kirî jî ji bo pêşkêşkirina wan ji hemû dilan re qada tesewwufî, adeta deryayeke berhema ye.

Ha me jî hewl daye bi dilekî naçîzane di nav heman ğaye û emancan de em dilopekê ji vê deryayê re pêşkêş bikin. Dilopek e, lewra tesewwuf, ji ber ku ji qalê (xeberdanê) bêhtir hal e, berhema me, heke di berê dana dilan ji bo hizûra mezin de karibe wezîfa pirekê îfa bike, emê xwe bextiyar bijimêrin.

Di vê meyanê de piştî me di berhema xwe de bi awayekî umûmî naveroka tesewwufê daye, me hewl daye em mijarên bingehîn ên tesewwufê her wekî marîfetûllah, mehebbetûllah, tezkîya nefsê, tesfîya qelbî, uslûbê tesewwufî û yên wekî van ku mijara bingehîna tesewwufê pêktînin, îzah bikin. Me hewl daye di serî de em hinek nimûneyan ji Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-,

hinek mînakan ji alimên mezin ên Îslamê ku warisê wê hebûna mûbarek in û hinek mîsalan ji tevger û bizavên wan pêşkêş bikin. Car caran di mahîyeta bersivdan ji bo wan şexsên xwedî dîtin-nêrînên mûxalif ku di bara kûrahî û ziravîyên tesewwufê de hinek tereddudên wan hene de -ne ku em şexsên wan hedef şanî bidin lêbelê sade wek fikr şanîdan- me malûmat û agahî erz kirine. Ji bilî vê me di berhema xwe de behsa vê jî kiriye; tetbîqatên kêm, bêkîfayet û ne di cih de yên hinek mirovên ji terbîya manewî ya ku tesewwuf arzû dike dûr, yan bi nîyeta baş dikin lêbelê bi awayekî cahilane dikin, yan jî ji ber ğefleta xwe wan dikin ti têkilîya wan tetbîqatên wan bi vê rêya mûbarek re nîn e û ew terîqetê jî temsîl nakin..

Welhasil ev berhem bi van hemû alîyên xwe ve di zahirê xwe de ya mûellifî ye, lêbelê di heqîqetê de te'lîfeke dostên Heqq e. Yanî hemû feyz û sipehîtîyên di berhemê de eks û şekl-şanîdanên ulwî ne, ku ji alema dilî ya ehlûllah xwe ji me re şanî dane.. Wezîfa me, ji vê ğeyret û hewldanê îbaret bûye; em li gorî lazimî û mercên roja xwe van sipehîtîyan berhev bikin. Li ser vî esasî, dema me berhema xwe amade dikir bêşiwar çawa me ji berhemên ku pêşî hatibûne nivîsîn îstîfade kiriye, aynî wisan me arîkarî ji gellek dostên xwe yên ku di mahîyeta "**pirtûkeke zindî**" de ne jî, dîtiye. Em dixwazin vê bi şehnazî, memnûnîyet û îftîxar qeyd bikin.

Dema em dawîyê didin peyvên xwe jî ew ehlûllah ên ku menqîbeyên wan di vê berhemê de hatine zikrkirin û ew akademîsyenên dostên me ku emek û keda wan gihaye me, em erzkirina dûa û mehebbetên xalisane yên xwe ji wan re erk û wacibeke wijdanî dijmêrin.

**Ya Rebbî! Digel bêkîfayetîya îlm û îdraka me, di bara alema fereha tesewwufî de dîsa ew hest, hiss û fikrên me ku me cur'et kiriye em wan îzhar û îfade bikin -Xuda hez bike- ew feyz û tesîrên ku wê ji xwendevanên rêzdar ên me re hasil bike, wê hereketeke bêdawîya teselsulê îhsan bike!.**

**Xudayê min! Bi wesîleya vê xizmeta dilî ya naçîzane me digel xwendevanên mûhteremên me ji lutf û kerema xwe bi nîmetên bêdawî nail bike, bigihîne! Van nîmetan jî li gorî ezamet û îcaba şanê ulûhîyeta xwe bi naverok û mûhtewayeke mûhteşem lutf bike!**

**Amîn!..**

**Osman Nûrî TOPTAŞ**
**Üsküdar/2002**

# BEŞA YEKEM

## Mahîyeta Tesewwufê

A- **ZAYÎNA TESEWWUFÊ**
B- **TARÎFA TESEWWUFÊ**
  1- Tesewwuf, Exlaqê Xweş û Edeb e
  2- Tesewwuf, Tezkîya Nefsê û Tesfîya Qelb e
  3- Tesewwuf, Cengeke Manewî Ye Ku Silha Wê Nîn e
  4- Tesewwuf, Îxlas e
  5- Tesewwuf, Îstîqamet e
  6- Tesewwuf, Riza û Teslîmîyet e
C- **MIJARA TESEWWUFÊ**
D- **ĞAYE'YA TESEWWUFÊ**
E- **PÊWÎSTÎYA BI TESEWWUFÊ**
F- **MÛNASEBETA TESEWWUFÊ BI ÎLMÊN DIN RE**
  1- Tesewwuf û Îlmên Îslamî yên Din
    a- Tesewwuf û Kelam
    b- Tesewwuf û Tefsîr
    c- Tesewwuf û Hedîs-Sîyer
    d- Tesewwuf û Fiqh
  2- Tesewwuf û Îlmên Fennî
  3- Tesewwuf û Edebîyat
  4- Tesewwuf û Hunerên Ciwan
    a- Musîqî
    b- Mîmarî
    c- Hunera Xetê
  5- Tesewwuf û Felsefe
G- **ÎLMÊ NAFÎ (Zanistên Bifeyde)**




“**Bibêje: Min îman bi Xuda anî û piştre xwe rast û durust bike**.” (Mûslim, Îman, 62.)

# MAHÎYETA TESEWWUFÊ

**“Sûnd be ku ji bo we; ji bo wî** (mûmînî) **yê hêvî dike ku ewê bi Xuda û roja dawîyê bigihe û Xuda pirr di bîra xwe tîne, di Resûlûllah de nimûneyeke sipehî û kamil** (uswe’ya hesene) **heye**.”[7]

## A. ZAYÎNA TESEWWUFÊ

Cenabê Heq bi îlawe li ser nîmetên bêdawî yên ku ji însanî re îhsan kirine, yek ji bilindtirîn nîmetên ku jê re bexş kiriye jî, bi gîyanê însanî arîkarî jê re kiriye, ji rûhê xwe têde pif kiriye û gotiye:

وَنَفَخْتُ فِيهِ مِنْ رُوحِي

**“Min ji rûhê xwe** (sirrek ji qudreta xwe) **têde pif kiriye**.”[8] Ji cem xwe cewherek jê re îkram kiriye, qîmetê ji her qîmetan mezintir jê re lutf kiriye. Di hemberê vê de jî jê xwestiye ku ew bi awayê mehebbeta ji Zatê Ulûhîyeta wî jê re evdînîyê bike, di encamê de nesîbê xwe ji marîfetê bigre û bi wusletê bigihe.

Heq Teala, ji bo bendeyên xwe bi hîdayetê bigihîne, hinek wesfên baş ji însanî re lutf kirine. Bi îlawe li ser vê jî Heq Teala ji navbera wan, hinek bendeyên xwe yên ku bi xulqîyeta wan mûstesna ku ji wehyê re bûne mezher wek pêğember wezîfedar kirine, bi vî awayî qencî li wan kiriye. Di wextên ku pêğember nebûne de jî bi bendeyên salih ên xwe yên ku warisên pêğemberan e, ev lutfa xwe daye dewamkirin.

Keyfîyeta şandina pêğemberan ku arîkarîyeke cihêwaza Xuda ji bendeyên wî re îfade dike, ji bo karibe li ser hemû însanîyetê şamil were jî bi Hezretê Adem -eleyhisselam- destpê kiriye. Hezretê Adem hem însanê nixurî ye, hem jî pêğemberê pêşî ye.

7. Ehzab, 33/21.
8. Hicr, 15/29.

Ev rêya pîroza hîdayetê, di nav herk û darêjên şîyan û qudreta îlahî de wekî tîrêjeke nûrê û helqeyên zincîrê bi sed û bîst û çend hezar pêğemberên li pey hev hatiye te'yîd û teqwîyekirin û tekamuleke mûtewazî bi tereqqîya ku însanîyetê qeydkirî daye qezenckirin. Vê silsîlê, bi teblîğateke ji xusûsîyet û mûxatebên wê serdemê re guncaw û mûnasib dewam kiriye û hatiye, di dawîyê de bi pêğemberê dawîn Hezretê Mûhemmed Mûstefa -sellellahû eleyhî we sellem- jî gihaye kemalê û bi zirweya mezintirîn gihaye..

Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- digel ku bi nûra xwe berî Hezretê Adem, lêbelê bi cismanîyeta xwe jî piştî temamê pêğemberan zihûr kiriye, ew bûye pela pêşîn û paşîna teqwîmê. Yanî teqwîma rîsaletê bi nûra Mûhemmedî ku pêşîyê hebûnê ye, destpê kiriye, pela paşîna wê jî bi "cismanîyeta Mûhemmedî" bidawî bûye. Ji lewma ew, bi zemanê xwe pêğemberê dawîyê ye, lêbelê ew bi xulqîyeta xwe jî pêğemberê pêşîyê ye.

Ji ber ku saiq û handerê hebûna mewcûdat û bûneweran nûra Mûhemmedî[9] ye, Cenabê Heq Hezretê Pêğember di lîyaqeteke ku ji bo xîtaba "Hebîbê min" bibe mezher, aferandiye. Rebbê me, jîyana mûstesna û mûtena'ya wî hem zahirê wê, hem jî batinê wê bi awayê ji her awayan sipehîtir terbîye kiriye û ew ji bo temamê însanîyetê wek xelatek bi dîyarî kiriye.

Sîreta Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- û şexsîyeta mûbareka wî, heta sirf bi tezahurên xwe yên ku dikevin îdraka însên jî zirweya pênegiha'ya menzûmeya bizavên beşerî pêktîne. Lewra Ellah -celle celaluhû- ew hebûna mûbarek, ji bo temamê însanîyetê bi "uswe'ya hesene" yanî bi nimûneya exlaqê ji her exlaqî mûkemmeltir kiriye. Ji ber vê ye ku Cenabê Heq, jîyana wî bi "zarokîtîya sêwî" ya ku ji hêla bêçaretîyê ve ew sewîya jêrtirîna navbera mirovan e, daye destpêkirin, ew di hemû qunağên jîyanê re derbas kiriye û ew heta bi nuqta jortirîn yanî bi serokdewletî û pêğembertîyê bilind kiriye ku ew ji hêla qudret, şîyan û selahîyetê ve nuqta ji her nuqteyê bilindtir e.. Da ku her kes di kîjan pêvajo û qunağên beşerîyetê de bibe bila bibe di wî de mûkemmeltirîn bizavên kiryarî ji bo xwe nimûne wergire, bi qasî îqtîdar û amadekarîya xwe jî karibe meyl bike ku van cihbicih û tehqîq bike..

Di esasê de Cenabê Heq eşkere kiriye; ew ji be'setê (ji dema bi pêğembertî şandina wî) heta bi dawîya dinyayê ji bo temamê mirovên ku werin ew nimûneyeke ji her nimûneyan mûkemmeltirîn, pêktîne.

9. Tirmizî, Menaqib, 1; Eclûnî, I, 265. Li hedîsa şerîfa di hijmarên 406 û 407'an binêrin.

Xuda dibêje:

لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِي رَسُولِ اللهِ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ
لِمَنْ كَانَ يَرْجُو اللهَ وَالْيَوْمَ الآخِرَ وَذَكَرَ اللهَ كَثِيراً.

“**Sûnd be ku ji bo we; di Resûlûllah de ji bo wî yê ku Xuda û roja dawîyê hêvî dike û Xuda di bîra xwe pirr tîne, nimûneyeke sipehî û mûkemmeltirîn** (uswe’ya hesene) **heye.**”[10]

Maneya vê, temamê însanîyetê ji bo bigihîje mûkemmelîyeta bizavên îmanî û exlaqî -bi tabîreke gelempertir- beşerîyet ji bo bigihîje mûkemmelîyeta tevger û bizavên tesewwufî mecbûr e ku ew bi awayekî layiq jîyan û failîyetên wê hebûna mûbarek hîn bibe. Ew çi ji heyata wî hîn bibe jî divê bi qasî amadekarîya xwe berê xwe bide teqlîdkirina wê û bi derbasbûna zemanî re jî cihbicihkirina wê ji bo xwe bi hedef û emanc bike. Ev jî bi qasî hezkirina ji wî û bi qasî li xwe kirina rûhanîyeta wî, bicih tê. Di bihest bûn û feyz-yabbûna digel wî de bêjimar nesîb û tecellîyên rûhanî hene. Li dinya û axretê şerefa ji her şerefê mezintir ev e ku em karibin bi qasî taqeta xwe nesîbê xwe ji şexsîyeta nimûneyî û jîyana dilî ya Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wergirin û em karibin exlaqê wî ji bo xwe bi rewîşt û exlaq bikin.

Rebbê aleman, mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- hem zahirê wî, hem jî batinê wî di fitreteke ji her fitretî sipehîtir de aferandiye û ew terbîye kiriye ku wî bi xwe jî ev terbîya îlahî bi vê peyva xwe îfade kiriye, gotiye:

“*Rebbê min ez terbîye kirime û wî terbîya min çi sipehî kiriye.*”[11]

Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- ji dema şerefdana wî bi alema dinyayê û pê de wî tam çil salan jîyana xwe di nav civaka cahilîyeke dehşetdar de bûrand. Digel vê jî ew di bin siyanet, mûhafeze û terbîya îlahî de mezin bû. Ew hîç di ti masîyeteke serdema cahilîyetê de pişkdar nebû. Heta di mahîyeta hazirîya ji bo nubuwwetê de singa mûbareka wî hatiye qelaştin, dilê şerîfê wî hatiye temîzkirin û ew bi feyz û nûrên manewî hatiye mûzeyyenkirin.

10. Ehzab, 33/21.
11. Suyûtî, Camîus-Seğîr, I, 12.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- berî pêğembertîya xwe jî di nav mûhtewaya tewhîdê de jîyaneke esîlane jîyaye, bi taybetî di wan zemanê ji wezîfedarbûna wî ya bi rîsaletê nêzîk de wî xwe bi temamî li ser vê weqf kiribû ku ew ji Xuda -celle celaluhû- re bibe bendeyekî rasteqîne.. Wî mûddeteke dirêj li çîyayê Nûrê xwe kişandibû înzîwayê û xwe di tefekkureke kûr de noq kiribû. Sebebê vê înzîwayê, di zahirê xwe de ew rahma dilê wî bûye ku ew ji alemê tevî re şamil dihat û ew jan û êşa li hemberî wê rêşaşî, zulim û sefaleta ku xelk ketibû navê bûye ku wê xwe di dilê wî de eks û xuya dikir.. Di heqîqetê de jî ew sefha û qunağeke hazirîyê bû ji bo Qur'ana ku ji însanîyetê re meşale û çirayeke ebedî ye, ji cem Xudê Teala peya bibe û ew bi wasîteya qelbê pakê Mûhemmedî guhastina ji bo îdrak û têgihiştina însên dabîn û temîn bike. Bi van tecellî û tezahuran alema dilî ya wî, bi safîyeteke rasteqîne giha û bi sewîyekeke wisan giha ku karibe êdî wehyê wergire. Ew dilê mûbarekê ku ji bo wergirtina wehyê bi halekî hazir hatibû, bi mûddeteke şeş mehan îşaretê manewî jê re di awayê xewnên sadiq de tecellî dikirin û ew ji bo îlham û sirûşan dibû mezher. Bi vî awayî ji bo wî bi xwe ji alema manewîyatê perdeyên sirran keşf dibûn. Ev serdem, demsala xuyabûna amadekarîya firtî ya wî ji bo wergirtina wehya îlahî û hilgirtina barê berpirsîya giran bûye ku bendeyên jirêzê û însanên normal ne mûmkin e karibin wê hilgirin. Aynî çawa ku hesinê xam jî di derûna xwe de bi pola werdigere.

Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- temamê selahîyet û wezîfeyên hemû pêğemberan di şexsîyet û bizavên xwe de berhev kiribûn. Esaleta neseb û edebê, seadeta cemal û kemalê di wî de bi zirwê giha. Wî çawanîya tesfîya qelbî û tezkîya nefsê ku cewhera tesewwufê ye, talîm kir û wî evdînî û dûaya ku bi qelbekî berraq li hemberê Cenabê Heq werin kirin, hîn kiriye. Wî exlaqê ji her exlaqî sipehîtir jîyaye û ji însanîyetê re nimûneyeke mûkemmel pêkanîye. Çil salîya temenê wî jî hem ji bo wî bi xwe, hem jî ji bo însanîyetê bû giringtirîn nuqta werçerxê.

❁

Tesewwuf, bi cewhera xwe ev e ku alema dilî ya me bi halekî selîm were, ji bo bigihe sewîyekeke ku karibe para xwe ji marîfetûllah û mehebbetûllahîyê bigre û bi xêra vê jî karibe were qiwameke ku ji bo wusleta îlahî bibe medar. Ev qiwam, mîraseke mûqeddes e, ji wî rûh, Hîra û Sewrê maye ku ewê me rizgar bike. Lewra gerek di van cih û mekanên xusûsî de, gerek jî di mekan û zemanên dîger de ev perwerde û terbîya manewî di şandin û dan

hînkirina wehyê ji bo Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de hatiye şopandin, tesfîya qelbî û tezkîya nefsê zemîna feyzdara wê perwerdeyê pêkanîbûye û pêktîne..

Berî hatina wehyê jî Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi sewîyekeke dîyarkirî ya qelbî û rûhî gihabû, ji xwe ew di nav jîyaneke bilind û exlaqekî bala de bû. Lêbelê dema ew ji Şikefta Hîrayê vegerîya bi talîmateke îlahî bi qunağ û merhelekeke mezin giha ku ew fersex bi fersex ji heyata berê ya wî dibûrî. Ew bi Rebbê xwe re ketibû îrtîbateke kûr û xurta qelbî, wî nûra tewhîd û marîfetûllahîyê bi hemû zerreyên xwe hezm kiribû, ew di evdînîyê de bi zirweya teqwa û xuşûê gihabû. Wî ew qeder evdînî dikir ku wî bi şevan di nav hêstirên çavan de heta lingên wî diwerimînin li ser evdînî û îbadetê dewam kiriye, heke çi qeder çavên wî razabin jî lêbelê dilê wî tim hişyar maye û ji bo an û kurtedemeke tenê jî ew ji zikrê Xuda, tefekkura wî û mûraqebeya wî hîç dûr û ğafil nemaye..

Bi rastî Qur’ana pîroz bi rêya wehyê ji wê hebûna mezin re hatiye şandin, wî bi mûhtewaya îlm û hikmeta ku Qur’anê li holê danî, wî bi heyat û îcraatên xwe yên ku bijardîyên wê serdemê jî bêçare bihêle bi rewşa deryayeke mûcîzewî hatibû ku heta wê rojê ti kes pê negihabû û heta qiyametê jî wê ti kes pê negihe.. Êdî hîç ti keşfeke ku wê heta roja qiyametê hasil bibe jî ewê nikaribe wî tekzîb bike û hîç ti mûrebbîyek û perwerdekarek jî wê nikaribe xwe bigihîne gwîzeka terbîye û perwerdeya wî.

Bi derbasbûba zemanî re ev qiwama rûhî û qelbî ya di Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- de hê bêhtir bi zirwe bûye, bi Mîraca ku ji Mehbûbî ji bo Hebîbê xwe îkrameke bêhempa bûye jî ew bûye “rêwîyê bêdawîtîyê.” Ew wê rojê wek mêhvanê xusûsî yê Rebbê xwe ji wêdetira bi wêdetiran jî derbas bûye, çûye û ew bi awayê ku di ayeta pîroz de hatiye eşkerekirin ji bo sirra « قَابَ قَوْسَيْنِ أَوْ أَدْنَى »[12] bûye mezher.

Ev îkrama mezina îlahî ku wek Îsra û Mîracê hatiye îfadekirin, lutfeke wisa ye ku wê hemû perdeyên beşerî rakirine, ew hemû di ser îdrakê re, bi

12. **Qabe qewseynî ew edna**: Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di şeva Mîracê de ji Sidretûl Mûntehayê biwêdetir hate derbaskirin ku heta bi Cebraîl û ti mexlûqekî din ji tixûbê wê nebûrîye. Ew keyfîyet û çawanîya ku di ayetê de ji bo têgihiştina beşer wek mesafeya “**navbera du kevanên ku hatine biyek-kirin, yan ji wan jî hê hindiktir**” hatiye eşkerekirin, ev wusleta ku wergirtina wê wek evd mûhal û mehrem e, hasil bûye. Li sûretê Necm, 53/9’an binêrin.

endaz û pîvanên îlahî tehqîq bûne. Di maneya beşerî de mefhûmê mekan û zemanî ji holê rabûne, rêwîtîyeke ew qeder dûr û ew qeder mûşahede ku temenê bi mîlyonan însanan têrê nekin di nav zemanekî hindik de hasil bûye. Wî alem, Kursî, Erş û Sidretûl Mûnteha derbas kirine, wek ji rû'yetûllah re mezher, bi awayê bêwasîte bi nîmeteke mûstesna ya wekî pevre-xeberdanê nail bûye.

Wî, bi vê qiwam û kemala dilî ya ku bi xêra lutfa Xuda pê gihabû di nav îştiyaqa ku hemû beşerîyetê bîne ser hîdayetê de li ser teblîğkirina dînê mûbîn dewam kir, wî bi hesta îfakirina vî emanetê îlahî ku pê hatibû sipartin ew bi rewşa zirweya zirweyan anîbû. Wî bêtereddud hemû teklîfên dinyewî ku ji îcrakirina wezîfa wî re dibûn asteng, red kirine û wî evdînîya ji Heq re di ser her tiştî re teleqqî kiriye û wergirtiye. Ev bûyera ku di serdema pêşîna teblîğê de çêbûye, vê heqîqetê çi xweş îfade dike.

Mûşrikan bi wasîteya Ebûtalib xeber ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- re şandibû û jê xwestibûn ku ew dev ji doza xwe berde. Vêca Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wek bersiv ji mamê xwe re wiha got:

"*-Mamo! Wellahî, heke ji bo ez dev ji teblîğa dînê Xuda berdin, ew rojê bixin destê rastê min, heyvê jî bixin destê çepê min, dîsa ew nikarin bikin ku ez dev ji doza xwe berdim! Ya wê Xudayê mezin wê li temamê cîhanê belav bike, wê wezîfa min xilas bibe; yan jî ezê di vê rê de bimrim û biçim!*"[13]

Mûşrik ji hilatin û derketina nûra Îslamê nexweşhal bûn, wan bi wasîteya Ebûtalib teklîfa xwe ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re şandin. Lêbelê li hemberî bêencam-mana vê pêngava xwe jî vêca ew bi xwe hatin cem mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û cur'et kirin ku van pêşniyazên xwe jê re bikin:

"-Heke tu dixwazî zengîn bibî, heta tu bixwazî emê mal bidin te; bila wisan bibe ku di navbera êlan de ti kesî ji te zengîntir nebe!

Heke tu serokatîyê arzû dikî, emê te ji xwe re bikin serok; ji Mekkê re bibe hukmdar!

Heke tu dihizirî ku bi jineke esîlzade re bizewicî, tu ji navbera keçên sipehîtirîn ên Qureyşîyan kîjanê bixwazî, emê wê bidin te!

13. Binêrin. Îbnû'l-Esîr, el-Kamil Fit-Tarîx, II, 64.

Tu çi bixwazî em hazir in wê bikin. Bes tu were, dev ji vê dozê berde!"

Dîsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di mahîyeta bersivdana ji bo hemû teklîf û pêşniyazên suflî û nefsanî yên ku ew ğafil dikin û ewê hê bikin de jî ji wan re wiha got:

"*-Ez hîç tiştekî ji we naxwazim. Ne mal, ne milk, ne seltenet, ne serokatî, ne jî jin! Daxwaza min bes ev e; hûn dev ji perestina pûtên bêçare yên ku wan diperêsin, berdin û evdînîyê sade ji Xuda re bikin!*"[14]

Hîç şubhe nîn e ku ev helwest, bizav û daxuyanîyên ku wê ji bo hemû însanîyetê bibin nimûne, mûkemmeltirîn tezahura di îmanê de sebatê û di wezîfê de jî ya şiûr û şîyarbûnê ne. Rewşa evdînîyeke îdeal û tertemîz e.

Lewra ev teklîf, teleb û bangên ji bo qebûlê neqabil, ne dicih de ku ji bo Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dihatin kirin di mahîyeta vê de bûne; di hemberê dinyayê de dev ji axretê berde. Çawa ku dîroka însanîyetê, bi çendîn îrade û bêjimar xapînan tije ye ku ew li hemberî bengên dinyayê yên li wan nefsan kirî, ew ji bo xwe gazî kirin, perde kişandina ber axreta bêdawî û avzêrkirina hewa û hewesên dinyaya mirok, helîyane.

Di esasê xwe de Qur'ana Pîroz di serî de bi hemdkirina ji Rebbê aleman re destpê dike û bi fermankirina li hemû mexlûqatan jî ku ew bi maneya mûtleq xwe bavêjin ber penaha Rebbê tek ê xwe bidawî dibe, di encamê de mirovan ji hest û hizrên neyênî yên dilî û wesweseyan temîz dike.. Li hemberê bûna Qur'ana Pîroz ku ew heta qiyametê ji bo însanîyetê rêzaneke nezarî ya hîdayetê ye; rêzanê fiêlî yê însanîyetê jî Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye, çûna li pey rêya wî û taqîbkirina şopa wî, tekane wesîle û wasîteya seadeta beşerî ye ku ew li ser ufûqa herdu cîhanan şamil tê.. Ma terkkirina vê ajar û nîmeta mezin wê di hemberê çi de meqbûl bibe?!

Qur'ana Pîroz ji bo Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- û bi wasîteya wî jî ji bo temamê beşerîyetê hatiye îkramkirin. Ew kelamê îlahî însanî ji bo vê bang dike; xwe nas bike, ji eserê here, bigihe mûessirî, ji sebebê here, bigihe mûsebbibî, ji hunerê here, bigihe hunermendî, ji mexlûqatan here, bigihe Xaliqî. Di dawîyê de ew rêya van talîm dike, li însanî dide hînkirin; Xuda zehf zêde zikr bike, temamê jîyana xwe wekî ku tu Wî dibînî wisan di nav hestên îhsan û teqwayê de bibûrîne, bi vî awayî bi şiûra ku tu

14. Binêrin. Îbnû Hîşam, es-Sîre, I, 236.

daîmî di bin mûraqeba îlahî de yî, bigihe û bi mehebbet û rizaya Cenabê Heq wasil bibe, bigihe..

Divê were zanîn ku dîsa tekane serkehnîya rahm û mehebbeta ku însanî bibe ser deryaya hezkirin û mehebbeta ji Xuda, Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- e. Ew wisa ye ku hezkirina ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di mahîyeta hezkirina ji Xuda de ye; îtaetkirina ji wî re di mahîyeta îtaetkirina ji bo Xuda de ye; îsyankirina li hemberê wî, di mahîyeta îsyankirina li hemberê Xuda de ye..

Wekî ku me li jorê behs kir, saiq û handerê hebûna mewcûdatan, nûra Mûhemmedî ye ku di xulqîyetê de ya pêşîn e, hezkirina ji aferînerê wê ye. Bi vê sebebê temamê kaînatê, ji bo şerefa nûra Mûhemmedî ku di xulqîyetê de ya pêşîn e û wek mezrûf ji bo wê hatiye xuliqandin. Ev kaînata ku ji bo nûra Mûhemmedî mezrûf e, ji cîhetê mûxatebbûn û gihiştina lutfên îlahî ve jî zirweya kaînatê, însan e. Zirweya menzûmeya însanîyetê jî wicûda Mûhemmedî ye. Ew însanê ku wekî baweşînkeke vê kaînata qerase û nehîtî di navê de pêçandî û meknûz e, alemeke mînyatur e. Bi vê sebebê di heman demê de jê re bi "alema biçûk" jî tê gotin. Ew heybereke zubde ye (tûk e) ku di bunyeya xwe de xulaseya bûnên mezin û tevahî yên mûsbet û menfî hildigre, ji qabila (mûmkinbûna) bûna çinareke gizra veşartî di tuxmê de, kurreyeke mezina veşartî ya di zerreyê de û cemîyeteke di nav ferdî de ye. Bi van wesfên xwe însanê ku "eşrefê mexlûqat" e, di zerrekokên okyanûsê de zirwekeke ji xeyalê biwêdetir heye ku ew jî wicûda Pêğemberî ye. Ewên ku jê re bi mûxateb bûne, bi qasî amadehî û îqtîdara xwe û bi îcaba mehebbeta xwe ji wî yan jî xusûmetên xwe Fexrê Kaînatê telaqqî kirine, wergirtine. Bi hezkirina ji wî nûr, bi heznekirina ji wî jî nar (agir) tê dîtin. Ferq di navbera telaqqîkirina Hezretê Ebûbekr û Hezretê Elî û Ebûcehl ji bo wicûda Mûhemmedî, xwe di vê keyfîyetê de daye xuyakirin. Hezretê Ebûbekr û Hezretê Elî ji ber ku karîbûn bi îşq û mehebbeteke mezin li Serwerê Aleman meyzînin, karîne bi vê şerefê bigihin ku xwe heta bi cewherê berdin û di silsîleya zêrîna tesewwufê de helqeya pêşîn pêkbînin.

❃

Ha tesewwuf ev e; mirov hem bi zahirê xwe, hem jî bi batinê xwe bi jîyana pîroza Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- re biyek bibe û bi mehebbeteke fereh pêve bikelije. Lewra ew jîyan, halê tecellîyên zahirî û batinî, hundur û derve yên Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- e. Ji bo

vê ye ku tesewwuf ji vê îbaret e; mirov karibe para xwe ji rûhanîyeta Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wergire û karibe bi gîyanê xwe bi wî re mezc bibe.. Bi îfadeyeke din tesewwuf sipehîtîya ku îman bi evînê re biyek dibe û îbadet û bizava ku bi wecdê têne bicihanîn. Welhasil tesewwuf, nesîbekî mezin e ku ji dema rûh di Adem -eleyhisselam- de hatî pifkirin ve destpê kiriye û şevnemên feyzê ne, ku ji tezahurên kemala di Nebîyê Axirzemanê de xwe di qelbên tije mehebbet de şanî didin.

Ev selahîyet (bikêrhatinî) û îqtîdara (şîyana) ku cewher û kakila tesewwufê pêktînin, ji bo mirov bi vî awayî di jîyana Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de keyfîyeta guhastina ji dil ji bo dilan û ji ferdî ji bo ferdan fehm bike, lazim e ku mirov awireke bi kom bide ser tevahîya jîyan û failîyetên wê hebûna pîroz..

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- çawa di her qadên jîyanê de usweyê hesene (nimûneya sipehî) bûye, di mijara tezkîye û terbîyekirina mirovan de jî nimûneya ji her nimûneyê sipehîtir bû. Ew, wek pêğember gellek wezîfe û selahîyetên wî hene. Lêbelê di navbera van de ev her çar wezîfeyên ku Cenabê Heq dane wî temayuz (xwe didin xuyakirin) dikin û hîn bêhtir giringîyê qezenc dikin:

**1**. **Wergirtina wehya îlahî** ye. Mezinê me Resûlê Ekrem, bi pirranî ji bo kelamê îlahî yê ku Ellah Teala bi wasîteya Cebraîl -eleyhîsselam- jê re şandiye, bûye mezher. Keyfîyet û awayê mûxatebbûna ji bo vê wehya ku bi xwestin û lutfkirina Cenabê Heq hasil bûye, bi îrtîhalkirina Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo darûl Beqayê (mala ebedîyetê) jî ew bi nîhayetê gihaye û qut bûye.

**2**. **Şerh û îzahkirina ehkam û heqîqetên Qur'ana Pîroz** e. Qur'ana Pîroz di nava xwe de li ser hinek hukm û heqîqetan şamil tê. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ew bi awayê ku warid bûne wisan bi hedîsên şerîf ên xwe û bi sîyera nebewî ya xwe tetbîq û îzah kirine. Ev selahîyeta (otorîteya) îlmî ya Resûlûllah ji terefê mûctehidan ve jî hatiye berdewamkirin.

Şerh û îzaha ehkamên îlahî li hemberî îcab û îhtiyacên jîyana beşerî di bin navê "**îctîhad**"ê de dewam dike û diçe. Dema ehlê îctîhadê peyda nebûbin jî çendan di zahirê xwe de ev keyfîyet hinek caran wekî ku hatibe girtin xuya bûbe jî lêbelê lazimî û zerûreta bi wê tim baqî maye. Ev erk û wezîfe ya her alima ye ku bi meqamê îctîhadê gihabin.

**3**. **Cihbicihkirina berpirsîyên rêvebirî** ye. Yanî xwedîbûna ji bo wê otorîteya îdarî ye ku bi nîzam û mûessese ferman û qedeğeyên dînî li ser lingan digre. Ev jî ji terefê xelîfeyan (ûlû'l-emran) ve hatiye dewrkirin û dan dewamkirin.

**4**. **Paqijkirina gîyanên beşeran û bi tezkiyekirina rûhên wan birêkxistina alemên hundurînên wan** e.. Ji bilî guhastina wehya ku ji Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- re dihat, ew ne têde ye, wekî din çawa bi awayekî ji awayan dan dewamkirina hemû wezîfeyên wî ji terefê şopînerên wî ve metlûb û mecbûrî be, aynî wisan bi nîhayet nebûna wezîfeya wî ya tezkiyekirina alema hundurîna însanan û birêkxistin-kirina wan jî, û heta qiyametê dan dewamkirina vê erkê ji terefê şêxan ve jî aynî wisan metlûb û mecbûrî ye. Lewra sade ne zahirê mûmînan paqijkirina batinê wan jî bes dikare sade bi vî awayî mûmkin bibe. Ha serkehnîya esas û usûlên bingehîn ên tesewwufî û rûhê wê yê di Qur'an û hedîsan de mewcûd jî ji dan dewamkirina van failîyetên nebewî hem jî di her zeman û mekanî de îbaret e. Ha zumreya şêxan û serkehnîya bênavber dan dewamkirina vê erkê jî ev îcab û îhtiyac e..

❁

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- merkez û zirweya fezîletên zahirî û batinî yên di îbadet, mûamelat û exlaq de ye. Ew nûrê hebûnê, piştî mûcadele û têkoşîna xwe ya sêzdeh salên li Mekkê, dema ji bo Medînê hicret dikir, Şikefta Sewrê jê re hate şanîdan. Li vir jê re hinek tecellî xuyabûn. Lewra ev şikeft, ji bo ğerqbûna di hikmetên îlahî û înkîşafa qelbî de cure dersxaneyek bûye. Mêhvandarîya li vir, sê şev û sê rojan dewam kir. Ew, ne bi tenê bû. Hevalê wî Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- bû, ku ew di piştî pêğemberan de ji her însanên din çêtir e. Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- bi şeref û fezîleta pê re hevaltîkirina sê rojan a di şikeftê de gihabû. Ew bûbû "duduyê duduyan ku sisêyê wan Ellah bû.." Nûrê Hebûnê ji vî hevalê xweşdivî (ezîzê) yê xwe re got:

لاَ تَحْزَنْ إِنَّ اللهَ مَعَنَا

**"Ğemgîn nebe; Xuda bi me re ye!"**[15] sirrê beraberbûna (maîyyeta) bi Xuda re telqîn dikir, dida hînkirin. Arifan ev hal, di heman demê de wek

15. Tewbe, 9/40.

destpêka talîma zikrê xefî (bi dizîkahî) û wek tezahura pêşîna bi Xuda re bi îtmî'nanê gihana dilan şîrove kirine. Di tarîxa Îslamê de tişta ku tê zanîn; di tesewwufê de Şikefta Sewrê yekem cih û mekan tê qebûlkirin ku têde guhastina sirrên rûhî û manewî ji dilan ji bo dilan destpê kiriye û mûxatebê şensdarê wê jî Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- e. Ji ber vê Hezretê Siddîq -radîyellahû anhû- di piştî Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de wek helqeya pêşîna **Silsîleya Zêrîn** hatiye wergirtin ku serê wê heta bi qiyametê wê bigihe.. Yanî Şikefta Sewrê bûye cihê qunağeke giringa perwerdeya bingehîna dilî ku wê bendeyî ji fezaya sirrên bêdawî bigihîne îllellah.

Li alîyê din hatiye neqilkirin ku Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- zikrê cehrî (bi eşkerehî) jî li Hezretê Elî -radîyellahû, anhû- talîm kiriye. Talîma zikr, ku yek ji giringtirîn telqînên tesewwufê ye, bi vî awayî şağeke tesewwufê ji Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- tê, şağeke din jî ji Hezretê Elî -radîyellahû anhû- tê.

Di esilê xwe de ji ber ku tesewwuf cewher û kakila dîn pêktîne, ji Hezretê Adem -eleyhisselam- destpê kiriye û heta bi esrê seadetê ew di heyata hemû pêğemberan de her hebûye. Tesewwuf, ew qeder mûhîm bûye ku mûmkin e mirov gellek destûrên tesewwufê di jîyana her pêğemberî de bibîne. Lêbelê tesewwuf bi maneya wê ya di roja me ya halê hazir de tedwîna wê wek îlmekî sîstematîk û ew wek rêyeke ku bi silûk û reftar bûye yekem car di sedsala duyema hicrî de destpê kiriye.

Di esrê seadetê de; hê mezhebên kelam, îtîqad û fiqhî pêk nehatibûn. Digel vê berî xuyabûna mezheban jî hukmên îtîqadî, fiqhî û hwd mewcûd bûn û ji terefê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ve ew li sehabîyan dihatin talîm û tetbîqkirin. Lêbelê ev, di usûlên îlmî de hê nehatibûne tedwînkirin. Piştî demeke dîyarkirî mesela di îlmê "Fiqh"ê de îctîhada alimên mezin ên ku otorîte têne jimartin, ji terefê şagirtên wan ve hate pejirandin, hate bi sîstemkirin û ji van usûlên ferqdar re "**mezheb**" hate gotin. Mezheban navê xwe ji navê wan alimên mezin wergirtiye. Her wekî Henefî, Şafîî, Malikî û Henbelî.. Ev mezheb di çareserkirina îhtiyacên fiqhî de wek usûl û rê ji terefê girseyên fereh ve hatine qebûlkirin.

Çawa di zanist û îlmên dînî yên din de wisa ye, di heyata zuhd û teqwaya ku tesewwuf telqîn dike de jî di heman minwalê de di esrê seadetê de dijîyan. Çi qeder zeman bi ser de derbas bû dostên Heq ku ev jîyîna feyzdar dane dewamkirin û ew ji bo xwe bi terzê jîyanê kirine, bi emanca ku nehêlin însan

ji dinyayê re ram bibin û di ğefletê de noq bibin, ji bo rizaya îlahî şîret li wan kirine û ji bo şîyarkirina wan ji ğefletê jî ew îqaz kirine.. Ji van zatan re ti ğaye û hedefek jî nebû ku ew rêbazeke nû, rê û uslûbeke jîyanê bînin meydanê. Lêbelê ğaye û hedefa wan ev e ku Îslamê bi awayekî ji cewher û kakila wê re guncaw bijîn û îbadetên xwe jî wekî ku di Qur'an û sunnetê de hatine teblîğkirin, îfa bikin. Lêbelê wek îstîfadekar ji sohbet û nesîhetên wan, însanên ku dixwazin para xwe ji halên wan wergirin, ev zatên ha ji bo xwe wek rêberek manewî û seydayek qebûl kirine. Van kesan, şîretên wan û usûlên paqijkirin û terbîyekirina nefsê ku wê mûmînî bi gihana rûhî û îstîqametê bigihînin, bi metod kirine û ew bi halê dîsîpîlîneke manewî anîne. Di netîcê de **terîqet** hatine meydanê ku navên xwe jî ji navê van seydayan wergirtine. Her wekî Qadirîyye, Mewlewîyye, Neqşîbendîyye û hwd..

Her şağeke tesewwufê wê usûla ku di mijarên wekî gihiştina Xuda, tefekkur û dan qezenckirina hesta îhsanê de dişopîne, taqîb dike jê re **terîqet** hatiye gotin. Terîqet, bi metodên xwe li ser sê qisman têne dabeşkirin:

1. **Terîqa Exyaran** e: Ew terîqet in ku li ser îbadet û teqwayê himbiz dibin.

2. **Terîqa Ebraran** e: Ew terîqet in ku bi giranî nefsê bi jan û xizmetê terbîye dikin.

3. **Terîqa 'Uşşaqan** e: Ew terîqet in ku bi îşq û wecdê gihiştina hedefê ji xwe re kirine emanc.

Bi vê wesîleyê kîjan ji van terîqetan ji mîzaca wî re guncaw û mûnasib be, her mûmîn ji bo paqijbûna manewî û gihana gîyanîya xwe dikare bikeve terîqetekê ji van terîqetan. Ji ber ku mîzac ji hev cuda ne, curbecurîya terîqetan jî tebîî ye.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de gotiye:

لِكُلٍّ جَعَلْنَا مِنْكُمْ شِرْعَةً وَمِنْهَاجاً

"**Me, ji bo her yekî ji we şerîatek û minhacek dîyar kiriye**."[16]

16. Maîde, 5/48.

Herçî peyva “**minhac**”a di vir de ye, di ferhengan de maneya “rêyeke mûnewwer” didinê. Ev jî rêya evdînîyê ye ku bi nîyeta teqerruba (nêzîkbûna) ji Cenabê Heq tê bi reftar û silûk kirin e. Mezinên Tesewwufê jî gotine:

“Rêyên ku diçin cem Cenabê Heq bi qasî hijmara nefesên mexlûqatan zehf in.”

Li alîyê din hukmên Qur’anî jî li ser sê qisman têne dabeşkirin:

1. Îtîqad e (bingehên bawerîyê)
2. Fiqh e
   a) Îbadet
   b) Mûamelat
   c) Ûqûbat
3. Exlaq e (Fiqha Qelbî ye).

Fiqha qelbî, îslahkirina alema hundurîn e, yanî exlaq e. Ew batinê îtîqadê û bizavên amelî pêktîne. Amel bi wê, sewîye werdigrin û dibin “amelên salih.” Di Qur’ana Pîroz de giringtirîn wesfên ku halê meqbûl ê qelb didin zanîn: Teqwa, zuhd û îhsan e.

**Teqwa**: Li hemberê Xuda hestkirina bi berpirsîya xwe ye û parastina dilê xwe jî bi awayê bi titîzî tetbîqkirina ferman û qedeğeyên îlahî ye. Xwe daîm di bin çavdêrîya Xuda de hisskirin e; ev jî bi xwe dûrkirina ji arzûyên nefsanî yên xwe û bi geşkirina amadehîyên giyanî yên xwe çêdibe.

**Zuhd**: Bi Xuda tijebûna dil e û valabûna dil ji masîwa ye. Yanî ev e ku di dil de ji bilî Xuda wekî din her tişt giringîya xwe jidest dide.

**Îhsan**: Mûmîn xwe di bin mûşahedeya îlahî de hiss dike û bizavên xwe li ser vê minwalê dide dewamkirin.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de gotiye:

الْإِحْسَانُ: أَنْ تَعْبُدَ اللهَ كَأَنَّكَ تَرَاهُ فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تَرَاهُ فَإِنَّهُ يَرَاكَ

"*Îhsan, ev e; tu îbadetê bikî her wekî tu Xuda dibînî. Lewra heke tu wî nabînbî jî ew hemin te dibîne.*"[17] Yanî îhsan ev e ku rûh mûşahedebûna Xuda ji xwe re bike îdrakeke berdewamî. Sewîye qezenckirina dil jî; bi her dem di nav vê hest û şiûrê de bûnê û bi tenzîmkirina temenekî li gorî vê bawerîyê mûmkin dibe. Ha bi teşekkula vî halî qelb bi safîyetê digihe. Bi vê nêrînê tesewwuf, îfadeya bi sefayê gihana qelbî ye.

❁

Ğaye'ya dîn; perwerdekirin û gihandina însanê sipehî, rûh-tenik û alema hundurîna xwe paqijkirî ye. Ev jî bi îdrak-kirina evdînîya ji Heq re çêdibe. Li gorî Îslamê însanê îdeal, ew kes e ku exlaqê Xuda û pêğemberê wî ji xwe re bi exlaq kiribe. Rêya gihiştina bi vê îdealê jî di perwerdeya dilî re derbas dibe.

Cewhera qelbî wekî ayneyeke berraq ji tecellîyên Heq re bi makes û xuyageh kirin, li wir ji xwe re cih dîtina zikr mûmkin dibe. Bi vî halê sipehî berê xwe dana dilî ji bo Heq, ji tezahurên berraq ên îmanê re bi wesîle dibe.

Heke bi wasîteyên "**zuhd**", "**teqwa**" û "**îhsan**"ê rêya pêşveçûna manewî nehatiba vekirin, heke bi awayekî qet'î beskirina bi hukmên zahirî tenê hatibûya fermankirin, hingê însanên bi istîdad îmkana gihiştina bi Xuda ji dest wan dihat wergirtin û dibû ku îstîdada însanî ya di nuqta nîhaî de jî li ber çavan nehatiye girtin.. Di vê rewşê de Cenabê Heq ku di her îrade û hukmên xwe de xwedî hikmet e, haşa dibû ku nuqsanî dihate ser tazîma îlahî.

Wekî ku me îfade kirî **îhsan** ev e ku bende, wisan xwe bi serûber bike her wekî ku di her dem û gavê de Rebbê xwe dibîne, jîyana xwe li ser vê minwalê tenzîm bike, mûşahedeya îlahî di dilê xwe de sabit bike û wê di xwe de bike hestek.. Bi vê nêrînê îhsan mîraca rûhî ya bendeyên ji Xuda nêzîk e. Ji vê cîhetê ve îhsan; heqîqeta manewî, rûhî, sirrî û îlahî ye. Ha hedefa mûtesewwifan jî gihiştina vê heqîqetê ye. Ev jî wê peywendîya rûhî û derûnî ya ku bi Xuda re hatî sazkirin, îfade dike. Ew kesê ku bi awayekî tendurust vê peywendîyê damezirîne, ew dibe bendeyekî ji Rebbê xwe re welî. Bi vî awayî ew dibe ku exlaqê îlahî ji xwe re bi exlaq kiriye.

Lêbelê heke bende bi vê heqîqetê negihe, şîyana wî ji bo gihiştina meqsûdê nîn e, ew mehkûm e ku bi zahir û teqlîdê îktîfa û bes bike.

17. Buxarî, Îman, 37; Mûslim, Îman, 1.

Exlaqê Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û heyata rûhanîya ku wî jîyaye, ji terefê sehabe, tabîîn û tabîê tabîînan ve bi nimûne hatiye wergirtin, zahir û batinê vê jîyanê û netîceyên wê yên ku têne dîtin û yên ku nayêne dîtin, yên ku têne îzahkirin û yên ku nayên îzahkirin ji nifşa pêşîyan ji bo nifşên piştî xwe hatibûne guhastin.. Heyata manewî ya ku bes bi vî awayî dewam dike, li ser hemû ummetê şamil tê û bi zumreyeke xusûsî taybet nabe.

❁

Digel ku têgihiştina bingehîna Îslamî wiha ye jî, ewên ku bi pirranî bi çavekî derveyî li tesewwufê dinêrin, yan jî ewên ku li hemberî wê helwesteke neyênî wergirtine, di bara menşe û serkehnîya tesewwufê de îddîayên curecur avêtine holê.

Hinek însan sirf ji ber lihevçûna dengên wan ketine rê û îddîa kirine ku ev failîyeta mûazzez ji peyva “sofos”ê tê ku ew di zimanê Yewnanî de bi maneya “hikmet”ê ye. Hinekan îddîa kiriye ku ew ji serkehnîyeke Îsraîlî tê. Hinekan îddîa kiriye ku ew ji mîstîsîzma Hindê tê. Hinekan jî di vê mijarê de dîtin-nêrînên curecurên ne di cih de avêtine holê. Ev dîtin nêrînên şaş in, li holê hatine danîn ku giranî bi lihevçûna kelîme û naverokan dane.

Di heqîqetê de jî di bara koka peyva “tesewwuf”ê ji kuderê hatiye de ew dîtin nêrîna ku alimên Îslamê li holê datînin nîşan dide ku serkehnîya tesewwufê bi temamî Îslamî ye. Di vê mijarê de di navbera dîtin nêrînên curecur û mûxtelif de ev hatiye îfadekirin; tesewwuf ji peyvên “sefa”, “sefwet” û “istîfa”yê peyda bûye û ew jî bi maneya paqijbûnî û bijardinî ye. Hinekan gotiye; uslûbê tesewwufê pêşî di sehabîyên abid û zahid ên bi navê “**ehlê suffe**” de xuya bûye û ji ber ku wan cilên “sûfî” yanî hirî lixwe dikirin, tesewwufê navê xwe ji vê peyvê girtiye. Ev dîtin nêrîn qebûl bûne.

Li alîyê din ev cemaeta sehabîyan ku bi meqsûda tehsîlkirina îlm, îrfan û manewîyatê li Mizgefta Nebewî îqamet dikirin û ji wan re “ehlê suffe” dihate gotin, wan bi teşwîqa Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di zuhd û teqwayê de temayuz kiribûn. Heta Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di bara îaşe (xwedîkirin) û îbateya (hewandina) vê zumreyê de ji eshabên xwe yên dewlemend xwestibû ku bibin arîkar. Ev rewş jî rastîyeke tarîxî ye, şanî dide ku cihê bizavên tesewwufî di sunneta Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de heye û dîyar dike ku ew pişta xwe bi tesdîqeke nebewî dispêre.

Ji navbera Ehlê Suffe yên ku li jîyanê mabûn li hemberî wan îxtîlafên ku di piştî Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de di nav nesla sehabîyan de rûdabûn xwe nedane alîyekî û ew bêteref mabûn. Heta wan îbret ji vê standibû ku ev îxtîlaf hesta biratîyê di navbera mûmînan de zeîf dikin vêca ew di zuhd û teqwayê de hê bêhtir bipêşve çûne. Ew di vê rewşê de ji bo bi zêdebûna neşweya sofîyan bûne wesîle. Hinek sehabîyên din jî ku têkildarbûna di îxtîlafan de ji hêla maneyî ve bi xeter dîtine, ew jî gihane wan. Bi vî awayî pirrbûn di hijmara sehabîyên ku rêya zuhd û teqwayê girtine de hatiye dîtin.

Bi derbasbûna zemanî re ji peyva "sûf"ê û ji riyazat û teqwadarîya "ehlê suffe" jî "tesewwuf" û mûtesewwif peyda bûne, ew bi fereh bûne û di seyra tarîxê de jî ew bi mûessese bûne.

❁

Ji ber ku alimên Îslamê bendbûna bi Qur'an û Sunnetê esas girtine, mûtesewwifên ku di rêya teqwayê de birêve diçin jî dîtin-nêrînên tesewwufî û esasên ku li holê datînin aynî wekî mûctehidan bi delîlên şer'î teyîd kirine. Lêbelê ji ber ku rêberên di vê rê de, yanî ji ber ku şêx ne ji wan însanan hatine bijardin ku zahirê dîn hezm kiribin di hinek terîqetan de bi sebeb ğeleba "neşweya sûfîyye" hinek ling -şemitîn hatine meydanê. Lêbelê ji navbera terîqetan ewên ku şêxên wan bi umûmîyet ji xaceganan yanî ji erbabên îlmê, ji însanên ku zahirê dîn hezm kirine, tên, ha çêdibe ku ew ji van ling şemitînan werin parastin. Neqşîtî û yên wekî wê ku di tarîxa tesewwufê de di naveroka Kîtab û Sunnetê de dewam dikin ji bo sedaqeta xwe ji delîlên şer'î re îfade bikin, bi tabîra marûf (naskirî) hukmê:

"Lingê sabitê pergelê şerîat e." bûye destûreke xerca alemê.

Çawa **Hezretê Mewlana** dibêje:

"*Em, wekî pergelê ne. Lingê sabit ê me di şerîatê de ye, em bi lingê xwe yê din jî li heftê û du milletan digerin.*"

"*Şerîat dişibihe mûmekî, ronahîyê digre, rê şanî dide. Bi destan girtina mûm rê nayê derbaskirin. Lêbelê bê destan girtina bi wî jî mirov nakeve rê. Ku tu di ronahîya şerîatê de bikevî rê û dest bi rêveçûnê bikî, ha ev çûyîn, terîqet e.*"

❁

*Tesewwuf ev hewldan e ku mirov xwe ji gemarên maddî û manewî paqij bike, exlaq û wesfên xweş qezenc bike û karibe bi awayekî ji cewhera dîn re guncaw bijîye.*

## B. TARÎFA TESEWWUFÊ

Ji ber ku tesewwuf zanist û îlmekî wisa ye ku çi qeder mirov wê dijî t'am jê tê dîtin û tê îdrakkirin mirov nikare bi awayekî tekûz wê di nav îmkanên peyvên sînordar de îzah bike. Tesewwuf wekî krîstalekê ye ku ji her beşeke wê rohnîyên curecur dixuyên, bi vê sebebê dostên Xuda, wechê wê yê ku li wan dinêre bi nezara îtîbarê girtine û jê re tarîf û pênaseyên cuda cuda kirine.

Dostên Heq û mûntesibên (endamên) vê rêya manewî, her yek ji wan bi qasî îstîdad (amadekarî), îqtîdar (şîyan) û tecellîyên halî ku di qelbên wan de zihûr dikin, mesafeyan qut dikin. Bi vê sebebê sinûhatên di alema rûhanî de, yanî li gorî îlhamên dilî yên ku di wan de tecellî dibin tesewwufê cuda cuda teleqqî dikin, werdigrin. Lêbelê temamê kesên wekî van ku tesewwuf tarîf kirine jî ji zawîye û goşeya xwe ve heqdar in. Em li tarîfên wekî van dinêrin û di bara mahîyeta tesewwufê de bes dikarin bibin xwedî fikreke umûmî.

Em dikarin bibêjin: Tesewwuf, bi alîyên hevbeşên ku ev tarîfên cuda cuda li holê datînin, îlmek e, alema hundurîna mûmînan biserûber dike, wan ji hêla maneyî ve dide tekamulkirin, bendeyî bi exlaqê hemîde digihîne, ji Heq nêzîk dike û bi vî awayî jî wan bi marîfetûllah'îyê digihîne.

❁

Dostên Heq li gorî tecellîyên rûhanî ku jê re nail bûne çend ji tarîfên bêjimar ên ku ji tesewwufê re kirine, wiha ne:

### 1. Tesewwuf, Exlaqê Xweş û Edeb e

Exlaqê xweş, îmanê ji teqlîdê rizgar dike, îstîqametê dide fikr û bizavan, hesta îhsanê yanî haletê rûhî yê wekî ku Cenabê Heq dibîne di qelb de sabit

dike, wê li ser şexsîyeta însanî dike unsurekî hakim û jêneqer û jîyîna li ser vê minwalê ye.

**Ebû'l-Hûseyn en-Nûrî** gotiye:

"*Tesewwuf, ne şekl e, ne jî îlmek e; ew sade ji exlaqê xweş îbaret e. Heke ew şekil bûya bi mûcahedê, heke ew îlm bûya bi hînbûnê tehsîl dibû. Bi vê sebebê sirf şekil û îlm bi meqsûdê nagihînin. Tesewwuf, lixwekirina exlaqê Heqq e.*" Wî têkilîya nebirra tesewwufê ya bi exlaqê xweş re destnîşan kiriye.

Tesewwuf, heke çi qeder navê wê di jîyana nimûneyî ya Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- de nehatibe teleffuz û bilêvkirin jî lêbelê ew bi mahîyet û heqîqeta xwe mewcûd bû. Ji exlaqê xweş meqsûd, exlaqê hemîde yê Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji xwe re biexlaq kirin e. Exlaqê wî ji terefê Rebbê me ve di Qur'ana Pîroz de bi vê ayetê:

وَإِنَّكَ لَعَلى خُلُقٍ عَظِيمٍ.

"**Bêşiwar tu li ser exlaqekî mezin î**."[18] hatiye te'yîd û tekrîmkirin.

Çawa ku dema exlaqê Resûlûllah ji Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- jî hatiye pirskirin ka ew çawa bûye? Wê di bersiva vê pirsê de wiha gotiye:

"*Exlaqê wî Qur'an bû*."[19]

Dema bende exlaqê Qur'anê ji xwe re biexlaq bike û îstîqameta xwe li ser hukmên wê siwar û rast bike, hingê adeta ew dibe Qur'aneke zindî. Bi tefekkur-kirina maneya wê tîlawetkirina Qur'ana Pîroz û wek pêbendbûna bi hukmên wê jîyîn, nuqta zirweyî ya exlaqê xweş e.

Ji dema ku Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wek pêğember hatî şandin ve û heta bi qiyametê ew bi rohnîkirina hemû zeman û mekanan hatiye fermanber û erkedarkirin. Li ser vî esasî, hemû bizavên wî heta bi teferruatên cuz'î û mehrem bigihe bi rîwayeteke sağlem ji me re hatine guhastin û ev întîqal jî heta bi qiyametê ji bereketa teselsulê re hatiye bimezherkirin. Dema hûrkolîn li ser sîyera Nebî were kirin wê were dîtin ku kemala însanîy-

18. Qelem, 68/4.
19. Mûslim, Mûsafirîn, 139.

etê û zirweya exlaqê xweş, Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- e. Lewra wî gotiye:

"Ez ne bi meqsûdeke din, sade ji bo temamkirina exlaqê xweş hatime şandin."[20] Wî wezîfa xwe tarîf kiriye û ew ji bo temamê alema însanîyetê bûye "**uswe'ya hesene**" yanî ew bûye nimûneyeke exlaqê mûkemmel.

❁

Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de exlaqê Mûhemmedî wiha îfade dike, dibêje:

"**Sûnd be ku ji bo we; di Resûlûllah de ji bo wî yê ku** (çavpêketina) **Xuda û** (gihiştina) **roja dawîyê hêvî dike û Xuda di bîra xwe pirr tîne, nimûneyeke sipehî û mûkemmeltirîn** (uswe'ya hesene) **heye**."[21]

Rebbê Mezinê me, wek îkramekê exlaqê xweş ji Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û pê de wê bi wasîteya **weresetû'l-enbîya** (mîratxwerên pêğemberan) heta bi qiyametê bênavber bide dewamkirin.

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi van daxuyanîyên xwe:

"J*i cîhetê îmanê ve mûmînê mûkemmeltirîn ew e ku exlaqê wî xweş be*."[22] îşaret pê daye ku exlaq; fêkîyê îmanê û elametê kemala wê ye. Dostên Xuda jî rêzanên manewîyatê ne, ku exlaqê Mûhemmedî ji xwe re biexlaq kirine.

Dema **Ebû Mûhemmed Cerîrî** dibêje:

"*Tesewwuf, ecibandina exlaqê xweş û xwe şemitandina ji exlaqê xirab e*." Dîsa wî ev heqîqet îşaret kiriye.

Bi exlaqê xweş xemilandina dil û xwe vedana ji exlaqê ne xweş, çawa ji bo seadet û selametîya ebedî mecbûrî ye, aynî wisan ew karekî bi meşeqqet e jî. Çawa ku ji navbera mûtesewwifên pêşîn Ebû Haşim Sûfî gotiye:

"*Kolana kibreke ku cihê xwe di dil de çêkiribe, ji kolana çîyayan ya bi derzîyê zortir e*."

20. Îmam Malik, Mûwetta, Husnu'l-Xulq, 8.
21. Ehzab, 33/21.
22. Ahmed bin Henbel, Mûsned, II, 250.

**Ebûbekr el-Kettanî** jî dibêje:

"*Tesewwuf exlaq e. Ewê ku bi exlaqê xwe ji te çêtir be, ew bi sefayê yanî bi temîzîya manewî jî ji te çêtir e.*"

Tarîxa însanîyetê bi çendîn bizavên exlaqî yên bêhempa yên pêğemberan ên di sipehîtîyê de tije ye. Yek ji nimûneyên sipehîtirîn ên van jî bêşiwar Hezretê Yûsuf -eleyhisselam- e. Wekî ku di ayetê de jî hatiye gotin wî ji birayên xwe yên ku bi awayekî eşkere zulim lê kiribûn re jî gotiye:

"**... Îro, ji we re şermezarî nîn e, bila Xuda li gunehên we bibûre! Bi rastî ew dilovînê dilovanan e**."[23] nimûneya lêbûrîneke wisan raxistiye ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî.

Hedefa mûtesewwifî ev e ku qelbê xwe bike wekî qelbê Hezretê Îbrahîm -eleyhisselam- ji dinyayê salim û ji fermanên îlahî re îtaetkar be, qelbê xwe bike wekî qelbê Hezretê Îsmaîl -eleyhisselam- ji Heq re teslîmbûyî û ji teqdîra îlahî re razî be, qelbê xwe bike wekî qelbê Hezretê Eyyûb -eleyhisselam- bi sebr be.. Divê huzna mûmînî wekî huzna Dawud -eleyhisselam-, be, divê feqîrtîya wî jî wekî feqîrtiya Îsa -eleyhisselam- be û ew ji dîgeran mûsteğnî be.

Mûtesewwif, ew kes e ku hewl dide ji bo dilê wî bibe wekî dilê Mûsa -eleyhisselam- dema wî mûnacat dikir dilê wî bi şewq û îştiyaqê tije û lebaleb bû. Ew hewl dide ku îxlasa wî wekî îxlasa Mezinê me Fexrê Kaînatê Hezretê Mûhemmed -sellellahû eleyhî we sellem- be. Yanî ew hewl dide ku li hemberê Rebbê xwe bibe xwedî mehebbet û semîmîyet.

**Ebû Hefs el-Heddad** gotiye:

"*Tesewwuf ji edebê îbaret e*." Bi vê hevoka xwe tarîf kiriye ku ew bilindtirîn xulaseya exlaqê xweş e.

**Hezretê Mewlana** jî di bara edebê de wiha dibêje:

"*Efendî! Zanibe ku edeb, rûhê di bedena însên de ye. Edeb bînahîya çav û dilê rîcalûllah e. Heke tu dixwazî serê şeytên biperçiqînî, çavê xwe veke û bibîne; edeb şeytanî hêrs dike. Heke edeb di însanî de nebe, bi rastî ew ne însan e. Ferqa di navbera însan û heywanî de edeb e*."

Maneya malikeke din jî wiha ye:

23. Yûsuf, 12/92.

"*Aqilê min ji dilê min pirs kir, jê re got: «Îman çi ye?» Dilê min jî devê xwe xist ber guhê min û jê re got: «Îman ji edebê îbaret e.»*

Şairekî din jî "edeb" çi xweş hûnandiye:

*Edeb tacek ji nûra Xuda ye*
*Wê tacê li xwe bike, emîn bibe ji her belayê*

Li ser vî esasî pêşî yek ji tekane lewheyên şîyarkirinê li tekke û dergehan ادب ياهو (*Edeb ya Hû!..)* bûye.[24]

## 2. Tesewwuf, Tezkîya Nefsê û Tesfîya Qelb e

Ji ber ku însan ji bo îmtîhana evdînîyê hatiye vê alemê, ew heta bi wextê mirinê bi îlletekê mûbtela ye ku jê re nefs tê gotin û ew hezar û yek nelêtî û menfîtîyan di nava xwe de digre. Heke însan heta bi balatirîn dereceya welîtîyê jî bilind bibe, dîsa ew her dem bi hîle, weswese û xefkên sê alîyan; dinya, nefs û şeytan re rûbirû ye. Ji xwe qîmetê evdînîyê jî bi berterefkirina van xeteran, bi xwe ji cezbkarên xapînokên vê alema fanî bi şûn de kişandinê, bi lixwekirina teqwayê û di encamê de bi berê xwe dana Heq destpê dike.

Ji bo edebkirina wê ficûr û meyla kirina xirabîyan ku di fitreta însanî de heye û şînkirina tuxmê teqwayê tezkîya nefsê û tesfîya qelbî zerûrî ye. Ji bo vê, her însan bi qasî îstîdad û îqtîdara (şîyana) xwe mûkellef e ku Cenabê Heq zanibe, vê zanîna xwe bi îrfan bike, bi amelên salih Mewlayê xwe tesbîh û tekrîm bike. Ha bi kurtî "evdînî" ev e. Gihiştina bi hedefa keyfîyet û awayê vê evdînîyê jî bi tezkîya nefsê û tesfîya qelbê ve bend e. Yanî bi derbaskirina astenga nefsê û bi xemilandina wê ya bi hestên bilind ve bend e. Naxwe bi "wasilê Ellah"[25] bûn û şerefmendbûna bi "lîqaullah"[26] bes bi vî awayî mûmkin e..

Qelb bi cewhera esilîya xwe, li vê alemê "**nezargeha îlahî**" ye. Yanî cewhera qelb wekî meqamê tecellîbûna nezarên Cenabê Heq ji bo şerefeke mezin dibe mezher. Lêbelê çawa li ser textê serayekê ji sultan pê ve ne mûmkin e kesekî din rûne, aynî wisan qelb jî meqamê seraya milkê bedenê ye, naxwe divê dil ji Xuda pê ve ji her tiştên din, yanî ji hizrên nefsanî, ji temayulên mekroh û ji masîwa were paqijkirin. Lêbelê ev nayê wê maneyê ku mirov nikare ji

24. Wekî ku ev îfade îqazeke ji bo rîayetkirina edebê bang dike, di heman demê de nîyazeke bi maneya "Ya Îlahî! Edebê lutf bike!" jî tê.
25. **Wasilê Ellah**: Li dinyayê bi dilê xwe bi Xuda gihiştin.
26. **Lîqaullah**: Li axretê bi cemala Rebbê me gihiştin.

bilî Xuda ji tiştekî din hez bike. Gerçî ewên ku nefsa xwe tezkîye û qelbê xwe tesfîye kiribin û bi zirweya qelbê selîm gihabin, ji mehebbeta masîwa azade bûne. Lêbelê însanên din ji vê re serkeftî nebûne ku derece bi derece hezkirina mal, ewlad û hwd bi temamî ji dilên xwe xîç bikin. Di esasê xwe de ev cure mehebbet, heta sînorekî diyarkirî derbas nekin, rewa ne.

Ji bo fehmkirina giringîya tesfîya qelbî meyzandina li mewqîîyê maddî û manewî yê dil yê di heyatê de kafî ye. Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- giringîya jîyanî ya qelb di însanî de wiha îfade kiriye, gotiye:

“*Di bedena însanî de perçekek goşt heye. Heke ew baş bibe beden tev baş dibe, heke ew xirab bibe beden tev xirab dibe. Bila xebera we jê hebe ku ew jî qelb e.*”[27]

Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- îfade dike ku berî girtina qula di binê çiwalekî de hewldan ji bo tijekirina wî ğeyreteke beyhûde ye. Aynî wekî vî heke amel jî bi dilekî tesfîyekirî werin kirin eşkere ye ku ev dikare însanî bi seadetê bigihîne. Lewra amel bi nîyetan ve girêdayî ne. Nîyet jî yek ji amelên qelb e. Bi vê mûnasebetê teshîha nîyetê û tezyîna wê bi îxlasê, şert e.

Ev keyfîyet jî halek e ku însan bes di encama perwerdeya qelbî ya ku li ber destê erbabê wê hatibe îcrakirin de, dikare pê digihe. Nuqteya ku dostên Heq di perwerdeya qelb de li ber xwe hedef datînin, gihiştina qelb bi şiûra îhsanê û beraberbûna qelb ya daim bi Xuda re ye û bi vî awayî gihiştina wî bi wesfê “dilê zindî” ye. Ji bo gihiştina qelb bi vê qiwamê jî zerûrî ye ku qelb ji masîwa, ji her tiştên ji bilî Xuda were paqijkirin.

Qelbê ku bi vê qiwamê digihe jî dikeve rewşeke ku êdî heqîqetên hûr û kûr dibîne. Bi qasî ku dil ji kesafetê xilas bibe û letafetê lixwe bike jî ew dibe makes û xuyagerh ji bo esma (navan) û esrarên (razên) îlahî. Bi vî awayî marîfetûllah hasil dibe ku maneya wê bi rêya qelb zanîna Cenabê Heq e. Maneya vê jî bi îrfan-bûna îlmê ye.

❀

Cenabê Heq daye zanîn ku bes ew mirovên bi qelbekî selîm, yanî bi dilekî tertemîz ê ku hatibe tesfîyekirin, ji hemû nexweşên manewî hatibe

27. Buxarî, Îman, 39.

paqijkirin û hundurê xwe bi mehebbeta îlahî tije kiribe wisan derkevin hizûra Xuda, ewê xilas bibin. Cenabê Heq wiha dibêje:

يَوْمَ لا يَنْفَعُ مَالٌ وَلا بَنُونَ إِلاَّ مَنْ أَتَى اللَّهَ بِقَلْبٍ سَلِيمٍ.

“**Ew roj, ne mal feyda dide, ne jî ewlad. Lêbelê ewên ku bi qelbê selîm** (bi dilekî tertemîz) **hatibin cem Xuda, mûstesna ne**.”[28]

Li alîyê din ew qelbên hişk û hola ku nekarîbin nefsa xwe paqij bikin û ji zikrê Xuda dûr mabin jî ewê herin helakê. Dîsa Xuda di ayeta Qur’ana Pîroz de wiha gotiye:

“**Ez, bi nefsê û yê ku awa daye wê û hinek qabilîyet dane wan, piştre sirûşa neqencî û xweparastinê pê daye zanîn, sûnd dixwim; ewê ku nefsa xwe ji xirabîyan paqij bike, xilas bûye!; Ewê ku nefsa xwe di xirabîyan de noq bike jî, wî ziyan kiriye!**”[29]

“**Xwelî li wan be ku di bara bibîranîna Xuda de dilên wan hişk û hola bûne! Ha ew, di nava rêşaşiyeke eşkere de ne**.”[30]

Ebû Saîd el-Xerraz di ronahîya van ayetên pîroz de ev peyva wî çi qeder manedar e:

“*Însanê kamil ew kes e ku Xuda qelbê wî paqij kiribe û ew bi nûrê tije kiribe*.”

## 3. Tesewwuf, Cengeke Manewî Ye Ku Silha Wê Nîn e

Ev tarîfa Hezretê Cuneydê Beğdadî îfade dike ku tesewwuf li dijî nefsê mûcahedeyeke di dirêjahîya temenekî temam de dewam dike. Cîhada li dijî nefsê, astengkirina hemû xwestekên ne rewa yên nefsê ne.

Ceng di zeman û mekanên mûayyen de têne kirin û xilas dibin. Ev mûcahedeya ku mirov li dijî nefsê dikeve navê jî divê mirov di dirêjahîya temenê xwe tevî de bênavber bide dewamkirin. Xuda di ayeta pîroz de gotiye:

28. Şûera, 26/88-89.
29. Şems, 91/7-10.
30. Zumer, 39/22.

“**Heta yeqîn** (mirin) **were te her li ser evdînîya ji Rebbê xwe re berdewam bike!**”[31]

Cenabê Heq ferman li bendeyên xwe kiriye ku ew li hemberî wê ğefleta ku derî ji hîle û desîseyên nefsê re vedike, daîm şîyar bin û li ser vê minwalê evdînîya xwe bidin dewamkirin. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

وَاذْكُرْ رَبَّكَ فِي نَفْسِكَ تَضَرُّعاً وَخِيفَةً وَدُونَ الْجَهْرِ مِنْ
الْقَوْلِ بِالْغُدُوِّ وَالآصَالِ وَلا تَكُنْ مِنَ الْغَافِلِينَ.

“**Di dilê xwe de, bi zara-zar, bi tirs û bi dengekî nebilind, sibeh û êvarê Xudayê xwe di bîra xwe bîne û nebe ji ğafilan!**”[32]

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi xwe di Ğezweya Tebûkê de pişkdar bûye ku navê “**Ğezwetû’l-‘Usra**” yanî “**Sefera Zehmet**” lê hatiye kirin, di vegerê de jî wiha gotiye:

“*Vêga em ji cîhada biçûk vedigerine cîhada mezin*.” Bêşiwar ev beyanat û daxuyanîya wî ji bo vê tarîfê bûye serkehnîya îlhamê. Li ser vê peyva ku di piştî sefereke zehf zor û zehmet de warid bûye:

Eshabê wî ketin heyret û dehşetê û jê pirskirin: “Ma ji vê mezintir cîhad çêdibe?” Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di bersiva wan de wiha got:

“*-Erê! Vêga em ji cîhada biçûk diçin cîhada mezintirîn; em li mûcahedeya bi nefsê re vedigerin!*”[33]

Yek ji lêkolînerên serdema me R. (Rûcîye) Garaudy giringîya vê hevkêşîya cîhada biçûk û mezin a di Îslamê de wiha dinirxîne:

“Tesewwuf bi temamî awayekî perwerdeya manewî ya Îslamî ye, di esilê xwe de ew mûcadeleyeke hundurîn e, li hemberî hemû arzûyên ku însanî ji emanca aferîna wî bidûr dixin û wî ji nefsa wî re dikin mehkûm, tê kirin. Navê vê di îstîlaha Îslamî de cîhada mezin e. Ew li dijî her cure îqtîdar, zengînî û agahîyên çewt ên ku mislimanî ji rêya xwe vediqetînin û wî ji xwe re ram

31. Hicr, 15/99.
32. ‘Eraf, 7/205.
33. Suyûtî, Camîus-Seğîr, II, 73.

dikin, lêbelê karkirin ji bo pêkanîna yekîtî û ahenga wî jî wek cîhada biçûk hatiye binavkirin. Ev hevkêşîya di navbera van herdu cîhadan de ye ku seadet û selametîya ferd û cemîyetê temîn dike."[34]

## 4. Tesewwuf, Îxlas e

Tesewwuf li hemberî Xuda semîmîyet e. Îfakirina amelan sirf ji bo rizaya îlahî û siha emanceke din bi ser wan de neanîn, di îstîlaha dînî de bi peyva "îxlas"ê tê îfadekirin. Ji bilî rizaya Cenabê Heq wekî din temîzkirina qelb ji hemû emel û hêvîyan, fezîleteke mezin e ku fermana wê li mislimanî hatiye kirin.

Ew amelên ku ji bo qezenckirina rizaya Cenabê Heq hatine fermankirin, tevlî wan nekirina şirîkekî, bêîxlasîyê yan jî riyakarîyê ku li cem Xuda ew amel, ji westandineke bêfeyda pê ve tiştekî din ji fail û kiryarên xwe re nahêlin. Ev jî şanî dide ku li cem Xuda yek ji giringtirîn şertên esilî yên ku amelan meqbûl dike "îxlas" e.

Îxlas, bi arzûya nêzîkbûna ji Cenabê Heq, parastina dil ji hemû cureyên şehwet û menfîetên dinyayî ye.

Îxlas, bendeyan bi rizaya îlahî digihîne ku ew jî xêra ji her xêran mezintir e.

Esil mirada Xudê Teala ji amelên bendeyan, bi îxlas îfakirina wan bi awayekî ji rizaya wî re mûnasib e. Xuda di ayetên pîroz de dibêje:

"(Ey Resûlê min!) **Bêguman me Qur'an bi heqiyê ji te re aniye xwarê. Naxwe tu jî, dîn sade ji Xuda re bi xas bike (bi îxlas) evdînîyê bike**!.."[35]

"**Bibêje: Bi rastî ferman li min hatiye kirin ku ez, bi dilsadeyî îbadet û îtaetê ji Xuda bi tenê re bikim.**"[36]

Ew Îblîsê ku ji hizûra îlahî hatiye qewirandin, wekî ku di ayeta pîroz de hatiye gotin:

"**Got: Ey Xudayê min! Sûnd be, bi sedema ku te ez ji rê deranîme, ezê jî li dinyayê ji wan re gunehan bixemilînim û ezê hemin wan tevan**

34. Binêrin. R. Garaudy, Peymanên Îslamê, rûp. 47.
35. Zumer, 39/2.
36. Zumer, 39/11.

**ji rêya rastiyê derînim! Lêbelê, evdên te yên bi îxlas û dilpak, ew cuda ne.**"[37]

Tesewwuf, weqfkirina her tiştî ji bo Xuda ye, nîmet û îzzet ji wî zanîn e û ji xwedbînî û ezperestîya xwe rizgarbûn e. Însan di çi hal û meqamî de dibe bila bibe, divê ew di xwe de hebûn û çêtirbûnekê wehm neke. Çawa Cenabê Heq bi mûnasebeta serkeftina Bedrê ji Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- re wiha gotiye:

فَلَمْ تَقْتُلُوهُمْ وَلَكِنَّ اللَّهَ قَتَلَهُمْ وَمَا رَمَيْتَ إِذْ رَمَيْتَ وَلَكِنَّ اللَّهَ رَمَى.

"(Di cengê de" **Ne we ew kuştin; lêbelê Xuda ew kuştin. Dema te avêt jî ne te avêt; lêbelê Xuda avêt**.."[38]

Naxwe însan divê her tim hest bi eczîyet û evdbûna xwe bike û her cure nîmet, mûzzafferîyet û mûweffaqîyetê wek lutfeke ji Xudê Teala zanibe. Heke na, ecra amelan wê hindik bibe, yan jî ewê bi temamî winda bibe, here.

❀

Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- dibêje; di bara encama wan kesên ku di îbadetên xwe de îxlasê winda dikin û xwedbînî û hewesên xwe derdixin pêş de Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Roja qiyametê kesê ku pêşî hesabê wî tê dîtin kesek e, şehîd bûye, ew bi hizûra Xudê tê anîn. Xudê Teala nîmetên ku dabûne wî tîne bîra wî, ew jî wan tîne bîra xwe û ew îtîraf dike ku ew bi wan gihaye. Cenabê Heq dibêje:*

*«-Baş e, li hemberî van te çi kir?»*

*Ew kes bersiv dide dibêje:*

*«-Min di ber te de cîhad kir heta ku ez şehîd ketim.»*

*Cenabê Heq jê re dibêje:*

*«-Tu derew dikî. Te şerr dikir ji bo bibêjin tu çi mêrekî qehreman î. Ew jî hate gotin.» Piştre ferman tê kirin, ew zilam bi serdevkî di cehennemê de tê werkirin û avêtin.*

37. Hicr, 15/39-40.
38. Enfal, 8/17.

*Vêca ew kesê ku îlm hîn bûye, daye hînkirin û Qur'an xwendiye bi hizûra Xudê tê anîn. Xudê Teala jî nîmetên ku dabûne wî di bîra wî tîne, ew jî wan di bîra xwe tîne û îtîraf dike. Ji wî jî dipirse, jê re dibêje:*

*«-Baş e, te li hemberê van nîmetan çi kir?»*

*Ew jî bersiv dide, dibêje:*

*«-Ez îlm hîn bûm, min ew da hînkirin û min ji bo rizaya te Qur'an xwend.»*

*Cenabê Heq jê re dibêje:*

*«-Tu derew dikî. Tu îlm hîn bûyî ji bo bibêjin alim e; te Qur'an xwend ji bo ew bibêjin; ew çi xweş dixwîne. Ev jî di bara te de hatin gotin.» Piştre ferman tê kirin, ew jî bi serdevkî di cehennemê de tê werkirin û avêtin.*

*(paştir) Kesekî ku Xuda her cure mal û îmkan dabûnê tê anîn. Xudê Teala nîmetên ku dabûnê di bîra wî jî tîne, ew jî nîmetên ku jê re hatibûne dayîn di bîra xwe tîne û îtîraf dike.*

*Cenabê Heq jê re dibêje:*

*«-Baş e, te li hemberî van nîmetan çi kir?»*

*Ew kes jî dibêje:*

*«-Her cihê ku te jê hez kiribû û tu jê razî bûbûyî ku jê re were dayîn min hîç ji ber wan negirtiye, min malê xwe sirf ji bo qezenckirina rizaya te daye û min ew xerc kiriye. »*

*Heq Teala jê re dibêje:*

*«-Tu derew dikî. Haleveku te, çi kiribe, te kiriye ji bo bibêjin ew çi mêrekî comerd e. Ji xwe ev jî ji bo te hatin gotin.» Ferman tê kirin, ev jî bi serdevkî di cehennemê de tê werkirin û avêtin.*"[39]

Hezretê Mewlana ji bo kesên ku bi awayekî ji îxlasê mehrûm îbadetê dikin, wiha beng dike, dibêje:

"*Hey ğafil! Dema tu diçî sicûdê xwezî te karîbûya bi semîmîyet berê xwe bida Heqq û te bi awayê layiq maneya gotina: «Ey Rebbê min ê Mezinê*

39. Mûslim, Îmare, 152.

*Mezinan, tu ji hemû sifetên nuqsanîyê mûnezzeh î.» fehm kiribûya, yanî ne sirf sicûda şeklî lêbelê te karîbûya biçe sicûda dilî!..*"

Îbadetên bêîxlas, bi şirîkên fanî û qirêjên manewî tije ne. Naxwe ew sirra ku îbadetan safî bike û bi ulwî bike, îxlas e. Amelên ku bêîxlas hatibin kirin hîç ti feyda wan ji bendeyî re çênabe. Çawa di piştî îmana dîn de giringtirîn fermana wî îbadetê nimêjê ye. Ewên ku bê rîayetkirina şertê îxlasê nimêjê eda û îfa dikin jî ew ji bo mûxatebbûna dehşetdara vê ayeta pîroz mane:

"**Xwelî li wan nimêjkeran be ku nimêjên xwe biciddî nagirin û riyakarîyê dikin**.."[40]

Cuneydê Beğdadî -quddîse sirruh- wiha dibêje:

"*Îxlas, tesfîyekirina amelî ji şîlotîya manewî ye.*"

Dostekî din ê Xuda jî dibêje:

"Di îxlasê de biîddîa bûn, cure bêîxlasîyek e." Lewra di îxlas û teqwayê de mezintirîn tehlûke, xwe xwedî-teqwa-dîtina mûmînî bi xwe ye.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

"*Di dînê xwe de biîxlas bibe! Heke tu wiha bikî, amelê hindik jî ji te re kafî tê.*"[41]

"*Ellah Teala li sûretên we û li malên we nanêre! Lêbelê ew (ji hêla îxlas û teqwayê ve) li dilên we û li amelên we dinêre.*"[42]

## 5. Tesewwuf, Îstîqamet e

Di tesewwufê de tam îfadeya xwe asê girtina bi Kîtab û Sunnetê "îstîqamet" e. Cenabê Heq, di vê mijarê de ji pêğemberê xwe re û di şexsê wî de jî ji me ummeta wî re di ayeta pîroz de wiha gotiye:

فَاسْتَقِمْ كَمَا أُمِرْتَ وَمَنْ تَابَ مَعَكَ وَلَا تَطْغَوْا.

40. Maûn, 107/4-6.
41. Hakim, Mûstedrek, IV, 341.
42. Mûslim, Birr, 34.

**"Ey Hebîbê min! Digel mûmînên ku bi te re tobe dikin, wekî ku ferman li te hatiye kirin wisan li ser îstîqametê bibin û zêdegavîyê nekin!**.."[43]

Mûfessiran di bara vê xîtaba îlahî[44] de ku ji bo vê gotina Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem-:

"*Sûretê Hûd ez yextiyar kirim*."[45] bûye sebeb de wiha gotine:

"Ey Pêğember! Bi mûcibê exlaq û ehkamê Qur'anê hereket bike, divê tu ji bo îstîqametê bibî nimûneyeke mûşexxes da ku bi vî awayî di bara te de ji bo ti şubhe û tereddudekê hîç cih û mehel nemîne! Tu li axaftinên nakok ên giregirên mûşrik û mûnafiqan nemeyzîne, wan ji Xuda re hewale bike! Tu çi di wezîfeyên giştî yên xwe de bî, çi jî tu di wezîfeyên xwe yên taybetî de bî, tam wekî ku ferman li te hatiye kirin wisan bi awayekî rast û durust li ser îstîqametê bibe, ji sîrata mûsteqîm cuda nebe! Bi cihanîna fermana wê wehya ku ji te re hatî çi qeder giran dibe bila ew qeder giran bibe, her di teblîğa wê fermanê, îcra û tetbîqkirina wê de ji ber ti astengekê jê cuda nebe! Rebbê te ji te re her arîkar e."[46]

Ebdûllah bin Ebbas -radîyellahû anhûma- bi vê ayetê re têkildar wiha gotiye:

"Di Qur'ana Pîroz de ji bo Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê ayeta pîroz de xîtabeke hê dijwartir waqî bûye."[47]

Ev xîtaba li vir heke çi qeder ji bo Mezinê me Nebîyê Zîşan hatibe jî tişta ku ew, xistibû meşeqqeteke ev qeder ku wî bi yextiyar bike, sade ne endîşeya îstîqameta bi şexsê wî re elaqedar bûye. Lewra ew bi vê ayetê:

"(Ey Hebîbê min! Tu) **Li ser sîrata mûsteqîm î**."[48] Ji bo te'yîda îlahî bûbû mezher. Naxwe mijara ku ew qeder tesîr lê kiribû heta ew bi yextiyar kiribû, bi sebeb ku ev ferman li mûmînan jî hatibû kirin ew endîşe bû ku wî di bara wan de hestpê dikir.

❁

43. Hûd, 11/112.
44. Binêrin. Qurtûbî, el-Camî', IX, 107.
45. Tirmizî, Tefsîra Sûre, 56/6.
46. Binêrin. Elmalili M. Hamdî Yazir, Heq Dînî Qur'an Dîlî, IV, 2829-2830.
47. Newewî, Şerhû Sahîhî Mûslim, II, 9.
48. Yasîn, 36/4.

Ji piştî bi pêğembertîyê şandina Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û pê de ji derveyî rêbertîya Fexrê Kaînatê hîç ti rêyeke din însanî nabe nagihîne cem Xuda. Lewra Ellah Teala, mehebbet û meğfîreta xwe bi şertê îtaetkirina ji Pêğemberê xwe re girêdaye. Xuda di ayetên pîroz de dibêje:

قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللَّهُ
وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَاللَّهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ.

“(Resûlê min!) **Bibêje: Heke hûn bi rastî ji Xuda hez dikin, li pey min werin ku Xuda jî ji we hez bike û li gunehên we bibûre. Xuda Ğefûr** (gunehbexş) **û Rahîm** (dilovîn) **e**.”[49]

“**Bibêje: Ji Xuda re îtaet bikin; ji Pêğember re îtaet bikin.. Heke hûn ji wî re îtaet bikin, naxwe hûn dibin ku we rêya rast û durust dîtiye** (û hûn bi hîdayetê gihane).”[50]

**Zunnûnê Misrî** -quddîse sirrûh- jî dibêje:

“Ew kesê ku di exlaqê xwe de, di kirin û bizavên xwe de li pey Sunneta Hebîbê Xudê Teala diçe, ew dibe ku wî hezkirina xwe ya ji Heqq îsbat kiriye.” wî jî ev heqîqet tey’îd kiriye.

**Bayezîdê Bistamî** -quddîse sirrûh- jî dibêje:

“Heke hûn mirovekî bibînin ku kariye lihevhatî bibe û li hewayê rûne, heta hûn jê nebînin ku ew tixûbên ferman û qedeğeyên îlahî diparêze, li pey sunnetê diçe û rîayeta heq û hiqûqê dike, dîsa bawer nekin ku ev keramet bin.”

Di bara mirovên ku karîne bi awayekî layiq “sîrata mûsteqîm”a ku rêya ehlê îstîqametê ye, silûk û reftar bikin de Xuda di ayeta pîroz de gotiye:

“**Kî, ji Xuda re û ji Pêğember re îtaet bike ha ew, bi pêğemberan re ne, bi siddîqan re ne, bi şehîdan re ne û bi salihan re ne, ku Xuda lutf û nîmet li wan kirine. Ev çi xweş heval in!**”[51]

Wekî ku em di ayeta pîroz de jî dibînin **sîrata mûsteqîm** (rêya rast û durust) rêya mirovên bijarde ye. Esasê îstîqametê jî îman û teqwa ye. Cihê

49. Alî Îmran, 3/31.
50. Nûr, 24/54.
51. Nîsa, 4/69.

van herduyan jî dil e. Li ser vî esasî îstîqamet, bi îman û teqwaya di dil de yek ahengbûna wicûdê, bedenê ye. Îman, îxlas û îtîdala di dil de; îstîqametê dabîn dikin û wan bi daîmî dikin. Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*Heta ziman li ser îstîqametê nebe qelb mûsteqîm nabe, heta qelb jî li ser îstîqametê nebe îman mûsteqîm nabe.*"[52]

Mirovek hatibû cem Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û jê xwestibû ku şîretan li wî bike, vêca Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jê re gotibû:

"Bibêje: Min îman bi Xuda anî! Piştre jî li ser îstîqametê rast û durust bibe."[53] Mezinê me bi vê hedîsa xwe dîn xulase kiriye.

❁

Bi qasî mûhafezekirina îstîqametê ya di her xusûs û mijarê de fermaneke îlahî ya din nîn e ku bicihanîna wê wekî ku Xudê Teala xwestî ji mûhafezekirina îstîqametê zor û zehmettir be. Lewra Mûhafezekirina îstîqametê meqamekî bilind e. Îstîqamet parastin û mûhafezekirina îbadetan bi îtîdal e, neketina îfrat û tefrîtê ye, sebatkirina di rêya Heq de ye, û bi bi qasî taqeta xwe jî bi awayê mûkemmeltirîn wekî ku ferman pê hatiye kirin wilo bicihanîna fermanên Xuda ye.. Ha ji bona vê sebebê kerameta ji her kerametê mezintir, îstîqamet e.

Dostên Xuda li ser îstîqametê bûn ji xwe re bi şîar kirine. Îstîqameta rasteqîne jî di rêya nûrdara Fexrê Kaînatê de çûn e.

Çawa Mewlana Celaleddînê Rûmî ev heqîqet çi xweş îfade kiriye, gotiye:

"*Heta ev can di çerm de raweste, ez bendeyê Qur'anê me, axa rêya Mûhemmedu'l-Mûxtar im û toza lingê wî me. Heke kesek ji peyvên min tiştek ji bilî vê neqil bike, biguhêze, ez ji peyva ku wî guhastiye û ji wî bi xwe jî bêzar im.*"

"*Kî ji ser sifra Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- here ser sifrekeke din, zanibe ku şeytan bi wî re ji tebsikekê dixwe. Lewra ew kesê ku ji wê sifra îrfanê pê ve sifrekeke din bibijêre wê hestî qirika wî bidirrîne û qul bike.*"

52. Ahmed bin Henbel, Mûsned, III, 198.
53. Mûslim, Îman, 62.

## 6. Tesewwuf, Riza û Teslîmîyet e

Teslîmîyet maneya wê; stûxwehr kirine, îtaet kirine, teslîm bûne û bêîtîraz qebûl kirine. Peyva Îslamê jî ji heman kokê tê. Tesewwuf, hesta riza û teslîmîyeta ji Heq re di dilan de bicih dike ji bo bende karibe li ser îstîqameta îlahî bijî û di her nefesê de karibe hîn bêhtir ji Rebbê xwe nêzîk bibe.

Lewra bandora hezar û yek elem, keder û êş û janên ku vê alema fanî dorpêç dikin û kesafet û himbizîya xapînên nefsanî, bes di encama riza û teslîmîyeta ji Heq re destpê dikin kêm dibin. Yanî bi bereketên riza û teslîmîyetê êdî dibe hest bi êş û janan nayê kirin. Heta îbtîla jî wek îltîfateke Rebbê wî têne wergirtin û ew jî bi keyfxweşî û sirûrê werdigerin.

Teslîmîyet, bi rizayeke fereh pêşwazîkirina li tecellîyên qederê ye, piştî tedbîrê qebûlkirina mûqedderatê ye û bi rizaya dilê xwe jî stûxwehrkirina ji bo encama ku wê bicih were ye. Sipehîtirîn nimûneya vê teslîmîyetê jî di Îbrahîm -eleyhisselam- û Îsmaîl -eleyhisselam- de tecellî bûye. Îbrahîm ji bo bicihanîna fermana Rebbê xwe çûye cîgerpareyê xwe bi qurban kiriye û Îsmaîl jî bi arzûmendane stûyê xwe ji teqdîra îlahî re xwehr kiriye. Qur'ana Pîroz, teslîmîyeta van herdu pêğemberan ji bo temamê însanîyetê wek nimûne şanî daye û di bara wan de gotiye:

"**Herdu jî ji fermana Xuda re teslîm bûbûn**."[54] Ev teslîmîyeta wan bi îltîfata îlahî nail bûye ku êdî qurban bi awayekî serbixwe ruknê îbadetekî pêkanîye. Îbadetê hecê, zimaneke ku her an û demê heta qiyametê ji bo ummeta ku were jî teslîmîyetê teblîğ dike.

Di ferman û qedeğeyan de ji Heq re teslîm bûn; divê mirov ji teqdîra îlahî re, ji meşeqqet û îmtîhanan re bi sebr û tewekkulê rizamendîya xwe şanî bide. Lewra kilîla kemalê, îbtîlan e.

**Şeqîqê Belxî** gotiye:

"Ewê ku mûkafata tengasîyê bizane, rizgarbûna ji wê hewes nake." Dostên Xuda ku ji vê nukteyê agahdar in, bi heman çavî li şîn û şahîyê meyzandine; Bi şahîya zêde wekî şîna zêde ku ji nefsê re xefk e, ber bi nuqteyên serî ve nehatine kişkişîn û di meqamê riza û teslîmîyetê de tereqqî kirine, bipêşve çûne.

54. Saffat, 37/103.

Alîyekî teslîmîyetê jî “evîn” û “mehebbeta îlahî” ye. Lewra hezker her tiştê ku ji hezkirîyên wan were bi xweş pêşwazî lê dikin, bi vî awayî hewl didin semîmîyeta xwe di hezkirina xwe de îzhar û îsbat bikin.

Ebû ‘Elî Rûzbarî îhtîmal heye ku ji vê ramanê hereket kiriye û tesewwuf wiha daye tarîfkirin û gotiye:

“*Heke mirov were qewirandin jî divê li ber derîyê hezkirîyê xwe li ser çokê xwe rûne û bi sedaqet û teslîmîyet çavnêrîya wî bike.*”

Ew bendeyê ku dilê wî ji evînê tije be, bi qasî hezkirina xwe her tiştê ku ji Rebbê wî tê, hemêz dike. Tecellîya teslîmîyet û evîna Îbrahîm -eleyhisselam- ji Rebbê wî re agirê dinyayê demekê bi bexçê gulan wergerandibû. Riza û teslîmîyeta Yaqûb -eleyhisselam- li hemberî teqdîra îlahî jê re êşa hesreta kurê wî Yûsuf sivik kiribû û ew di vê de biser xistibû ku bibêje: “**Sebra cemîl li para min dikeve**.”[55]

Ehlê tesewwufê, teslîmîyeta ji Heqq re ku rêya pêğembera ye, ji bo xwe bi mihwera jîyana xwe kiribûn. Lewra çawa **Rabîatu’l-Edewiyye** -quddîse sirrûha- jî gotiye:

“Hezker ji hezkirîyê xwe re îtaet dike.”

Yanî teslîmîyet, karê îtaeteke arzûmendane ye ku pişta xwe bi hezkirinê dispêre.

Eshabê kîram jî bi qasî hezkirin, pêbendî û îtaetên xwe ji Pêğemberê me re tekamul kirine. Bi saya bêîtîraz stûxwehrkirina wan ya bi hezkirin û teslîmîyetê, ew ji bo temamê ummetê bûne stêrên nimûneyî.

❀

Di bara tarîfên tesewwufê de bi îlham standina ji van vegotinan em dişên van bibêjin:

**Tesewwuf;** ev hewldan e ku mirov xwe ji qirêjên maddî-manewî paqij bike, exlaqê xweş û wesfên çak qezenc bike û karibe bi awayekî ji cewhera dîn re guncaw, bijî. Di bûyerên maddî yan jî manewî de bûnên sirrî û mûammayên mezin hene ku sirf aqil tenê ji çareserkirina wan re kafî û têrker nayê, ha tesewwuf gihiştina bi vê kemala dîtin-nêrîna berfereh e ku karibe çareserîyan ji wan re bîne. Dil, hest bi çêjên rûhanî yên bêdawî dike, ew ji wan re meclûb

55. Yûsuf, 12/18.

e, nefs li ber wan zewqan adeta ling-bend û asteng e, ha tesewwuf, hewdan û xebat ji bo derbaskirina vê astenga nefsê ye. Tesewwuf; zanista hinek hal û malûmata ye ku mirov karibe temayulên nefsanî yên bedena ku rûh têde hatiye hebskirin derbas bike û bi uslûbeke arîfane li heqîqetên mûcerred ên di cewher û rasteqîneya hemû bûyeran de û sefheyên îbret û hikmetan ku di pişt perdeya tixûbê îdrakan de cereyan dikin, temaşe bike..

Em di bara pênase û tarîfên tesewwufê de encamê ji şêxê Dergehê Olanlar ê Aksarayê Îbrahîm Efendî re dihêlin ku ew di "**Menzûma Tesewwufî**"ya navdara xwe de dibêje:

**Di serî de ji bêcan-bûna sofî re dibêjin**
**Di dawîyê de ji bo siltan-bûna di textê dil de dibêjin**

"*Destpêka tesewwufê, ev e ku mirov bibe sofîyekî ku dest ji hebûna maddî ya xwe dikişîne, di xwe de hebûnekê nabîne, bi kurtî îradeya xwe ji Heqq re teslîm kiriye. Paşîya wê jî ev e ku mirov hemû sipehîtîyên îlahî qezenc bike û ji textê dil re bibe siltan.*"

**Di terîqetê de tesewwuf ji mehûbûna sûretî îbaret e**
**Di heqîqetê de ji bo mêhvanbûna ji seraya sirran re dibêjin**

"*Di terîqetê tesewwuf; ji mehûbûna sûretî îbaret e. Yanî xilasbûna ji lawazîyên beşerî ye. Di heqîqetê de jî ji saraya sirrên îlahî re mêhvan-bûn e.*"

**Tesewwuf, tazîbûna ji vî lîbasê av û axî ye**
**Tesewwuf, ji bo bûna cismê safî bi nûra Yezdan dibêjin**

"*Tesewwuf, xilasbûna ji cil û qefesên fanî yên ku ji ax û avê îbaret in. Bi vî awayî wek hebûneke tertemîz bûna bi nûra Xudê Teala ye.*"

**Tesewwuf pêketina ji çîrûskên nûrên mûtleq e**
**Tesewwuf ji bo bûna sûzana bi agirê evînê dibêjin**

"*Tesewwuf, pêxistina ronahîya (mûmê dil) bi nûra îlahî ye. Lewra tesewwuf, ji bo pêketina bi agirê evînê dibêjin.*"

**Di tesewwufê de şert tewandina nameya hestîyî ye**
**Tesewwuf ji bo bûna ehlê şer'ê û ehlê îmanê dibêjin**

"Di tesewwufê de esil tewandina kitêba hebûnê ye, xwe kişandina ji xwedbînîya xwe ye. Esil tesewwuf, bûna ehlê şerîatê û bûna ehlê îmanê ye."

**Tesewwuf arif bûn e, bi adetûllah hekîm bûn e**

**Tesewwuf ji bo bi derman bûna ji bo derdê tevan dibêjin**

"*Tesewwuf, bi sirr û tecellîyên îlahî û bi hikmetên îradeyê zanîn e; ariftî ye. Dîsa tesewwuf bi derman bûna ji bo hemû xwedî derdan e.*"

**Tesewwuf bi miftaha îsmê vekirina tilisma çermî ye**
**Tesewwuf bi temamî wêranbûna vê avahîya ava'ya mirok e**

"*Tesewwuf, bi miftaha îsmê (Xuda) vekirina tilisma bedenê ye. Dîsa tesewwuf, bi temamî tinekirina vê avahîya mirok e.*"

**Zanibe ku tesewwuf bi halê wergerandina kelamê sofî ye**
**Paşê heta her peyva ku ew dibêje bi ava jîyanê bibe**

"Zanibe ku tesewwuf bi halê wergerîna kelam û malûmatên sofî ye. Paşê heta her peyva ku ew dibêje bibe îksîra ava jîyanê û nemerinê."

**Tesewwuf zanîna îlmê ta'bîrat û te'wîlatê ye**
**Tesewwuf di mala can de ji bo bûna bi sirra Subhan dibêjin**

"*Tesewwuf, qezenckirina kûrahîyeke mezin, waqifbûna ji zanistên tabîr û te'wîlê ye û bi vî awayî îdrakkirina sirrên îlahî yên di însan, Qur'an û kaînatê de ye. Dîsa tesewwuf, di mala can de bûna bi sirreke Xuda ye.*"

**Tesewwuf di heyreta kubra de mest û şîyar bûn e**
**Tesewwuf di esrarên Heq de ji bo bi heyran-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf, li hemberî ezamet, qudret û sipehîtîya Heq de di nav heyret û dehşeteke mezin de hem serxweş bûn hem şîyar bûn e. Lewra tesewwuf, heyrantîya ji bo sirrên bêdawî yên Heq e.*"

**Tesewwuf ji mala dil birina masîwellah e**
**Tesewwuf ji bo qelbê mûmînî bi bûna erşê Rahman dibêjin**

"*Tesewwuf, ji seraya dil deranîna her tiştê ji bilî Xuda ye. Lewra tesewwuf, maneya wê ev e ku dilê mûmînî bibe erşê Xuda.*"

**Tesewwuf di her nefesê de gihiştina bi şerq û ğerbê ye**
**Tesewwuf ji bo vê pasevan-bûna ji hemû xelkê re dibêjin**

"*Tesewwuf, di her nefesê de gihiştina bi şerq û ğerbê ye, yanî li wir hizirîna ehlê îmanê ye, di şîn û şahîya wan de şirîk bûn e; ji ehlê îhtiyacê re xizmet kirin e. Yanî tesewwuf, dîtina hemû xelkê ye û hewldan ji bo çavdêrîkirina li wan e.*"

**Tesewwuf di cumle zerratê cîhanê de Heqq dîtin e**
**Tesewwuf ji bo bûna sofî bi roj ku kaînatê rohnî dike dibêjin**

"*Tesewwuf, di hemû zerreyên cîhanê de mûşahedekirina Cenabê Heqq e. Bi vî awayî tesewwuf, ji bo alemê wekî rojê bûn e.*"

**Tesewwuf fehmkirina zimanê heftê û du milleta ye**
**Tesewwuf ji bo alema aqil bûna bi Suleyman dibêjin**

"*Tesewwuf, zanîna zimanê heftê û du milleta ye, yanî fehmkirina ji halê her kesî ye. Tesewwuf ji bo alema aqil bi Suleyman bûn e.*"

**Tesewwuf bi can hilgirtina barê 'urwetu'l-wusqa ye**
**Tesewwuf ji bo bûna bi mezher ji bo ayeta ğufranê dibêjin**

"*Tesewwuf, bi can hilgirtina wî bar û wê mesûlîyeta emanetê îlahî ye ku Xuda li însanî bar kiriye û ew jî Qur'ana pîroz e. Tesewwuf bûna bi mezher ji bo wan ayetan e ku mizgînîya meğfîreta îlahî didin.*"

**Tesewwuf bi îsmê ezam teserrufkirina di hemû kaînatê de ye**
**Tesewwuf ji bo bûna bi komkirina ehkamê Qur'anê dibêjin**

"*Tesewwuf, bi îsmê ezam teserrufkirina di hemû kaînatê de ye. Dîsa tesewwuf komkirina hukmên Qur'anê di dilê xwe de ye, yanî karîna bûna bi Qur'an-eke zindî ye.*"

**Tesewwuf di her nezarê de li zatê Heqq nezar kirin e**
**Tesewwuf ji bo sofî bi hêsan-bûna her mûşkîlê dibêjin**

"*Tesewwuf di her awirê de berê xwe dana alîyê Cenabê Heqq e. Dîsa tesewwuf, bi hêsanbûna her zehmetîyan ji bo sofî ye.*"

**Tesewwuf bi mexzen-kirina singa xwe ji bo îlmê Heqq e**
**Tesewwuf dema sofî dilopek bû ji bo wî bi umman-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf dilê xwe bi cih û mekan-kirina ji bo îlmê Heqq e, yanî bûna bi xwedî ji bo îlmê ledunnî ye. Bi vî awayî tesewwuf, dema sofî di hukmê dilopekê de ye, bi umman û deryayeke fereh bûna wî ye.*"

**Tesewwuf bi agirê "la"yê şewtandina xwelîya bedenê ye**
**Tesewwuf bi nûra "îlla"yê ji bo bi însan-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf, li hemberî hebûna Heqq bi agirê na/nîn e" şewitandina hemû mewcûdata ye û bi xwelî kirina wan e. Tesewwuf bi nûra "îlla"yê yanî bi dilekî paqijbûyî bi tewhîdkirina Xuda bûna bi însanê kamil e.*"

**Tesewwuf bi «qul kefa billah» bang-kirina li xelkê ye**
**Tesewwuf bi lefzê «îrcîî» ji bo bi mest-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf bi ayeta «**Bibêje: Xuda ji te re bes e!**»[56] bang-kirina însanan ji bo rêya Heqq e. Dîsa tesewwuf, bi zewqa lefzê «**Li Rebbê xwe vegere!**»[57] ji xwe çûn e.*"

**Tesewwuf di rojê de hezar caran mirin û ji nû ve sağbûn e**
**Tesewwuf ji bo cismê cumle alem ji bo bi can-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf, her roj berî mirinê bi hezaran caran jîyîna sirrên mirinê û bi dilê xwe zindî mayîn e. Di piştî vê de tesewwuf, karîn ji bo cismê alemê bi can-bûn e, yanî karîn îhyakirina dilên din e jî.*"

**Tesewwuf fanîbûna zatê însanî di zatê Heq de ye**
**Tesewwuf ji bo nihanbûna di qurba «ew edna» de dibêjin**

"*Tesewwuf, tinekirina însanî ya hebûna xwe di hebûna Heqq de ye. Bi vî awayî tesewwuf, di nav nêzîkatîyeke ku di wusleta mîracê de tecellî kiriye û di ayeta pîroz de jî bi awayê: «**Ji du kevanan jî nêzîktir**»[58] hatiye îfadekirin karîn xwe bi nihan kirin e.*"

**Tesewwuf can bi canan dan û azade bûn e**
**Tesewwuf ji bo bûna canê canan bi canê canan-bûnê dibêjin**

"*Tesewwuf canê xwe bi hezkirîyê xwe dan û rizgarbûna ji her cure êsîrtîya fanî ye. Bi vê nêrînê tesewwuf, karîn bûna bi canê hezkirîyê xwe ye, erê karîn bûna bi canê hezkirîyê xwe ye, yanî hatin hezkirina ji terefê wî de ye jî.*"

**Tesewwuf, bende bûna heqîqet û heq e, ey Îbrahîm**
**Tesewwuf di dil de ji bo bi burhan-kirina şer'a Ahmed dibêjin**

"*Ey Îbrahîm! Tesewwuf di esilê xwe de ji Xudê Teala re bende-kole bûn e. Ji bo vê tesewwuf, di dilê xwe de rê û destûra Hezretê Ahmed -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo xwe bi delîl û rêzan kirin e.*"

---

56. Re 'ad, 13/43
57. Fecr, 89/28.
58. Necm, 53/9.

*Mijara tesewwufê wekî deryayekê fereh û kûr e. Lewra ew bi her mijarê re elaqedar dibe ku nefsa însanî û gîyanê wî têkildar dikin.*

## C. MIJARA TESEWWUFÊ

Bi awayekî fereh û curecur îzahkirina tesewwufê û jê re tarîf anîn, bi vê nêrînê ji ferehbûna mijara wê dizên. Yanî mijara tesewwufê wekî deryayekê berfereh û kûr e. Lewra ew, bi mijarekê re elaqedar dibe ku ew nefsa însanî û rûhê wî têkildar dike. Ew bi mijarên bêjimar ên wekî hemû mesafeyên ku bende di rêwîtîya manewîya xwe de qut dike, alemên ku ew di wan re derbas dibe, heyberên ku ew bi wan re di peywendîyê de ye, hezar û yek cure ehwalên ku ew wan dijî û di dawîyê de jî dîtina Xudê Teala Rebbê aleman, bi dilê xwe karîn naskirina wî û evdînîkirina ji wî re, têkildar dibe. Heke em ji deryaya mijareke wiha sê yan jî pênc dilopan teqdîm bikin, em dişên van bibêjin:

Tesewwuf ew rêveçûn e ku bi tezkîya nefsê û tesfîya qelbî «însanê xam bi huwîyeta însanê kamil» digihîne, ha tesewwuf wan merhele û halên ku di vê rêveçûnê de têne dîtin, ji bo xwe bi mijar dike.

Bi îfadeyeke din tesewwuf, ji halên tezkîya nefsê, tesfîya qelbî, bi nûrkirina hundurîn û derveya xwe û paqijkirina sûret û sîreta xwe behs dike ku ev jî ji bo bidestxistina rizamendîya Heqq û gihiştina bi seadeta ebedî ye. Mijara wê texelluq (bi exlaq bûn) û teheqquq (bi xwedî-bûna heqîqetên manewî y) e. Bi zewqeke manewî çêjandina hesta îhsanê û wilo jîyîn e.

Bi vê mûnasebetê mijara bingehîna tesewwufê usûla gihiştina Ellahê Wacîbû'l-Wucûd, sifetên wî û rêyên qebûla wan e.. Her wiha îdrak-kirina sirran û naskirina nihanî û xefîyatên di pişt perdê de ne û naskirina her tiştên ku di navên Xuda û sifatên wî de meknûz in ku ew jî di kaînat û mexlûqatên wî de tecellî dibin..

Di vê mûhtewayê de tesewwuf halên ku salik wan derbas dikin ji xwe re bi mijar dike. Ew hinek ehwalên taybet û meqamên bilind ên rûhanî ne, ku ew ji wesîleyên marîfet, îman, terbîye û wusletê têne qebûlkirin; her wekî keşf, îlham, mûşahedeya manewî, wecd û evînê ne. Ev hinek ehwal in ku qaîdeyên wan, meqamên wan û bandora wan li ser nefs, rûh, dil, wijdan, zahir û batinê heye.

Xulase tesewwuf, bi awayekî yeqînî mûşahedekirina tecellîyên nav û sifetên Xuda û marîfetê (marîfetûllah) û bi zanîna heqîqetên însan, kaînat û Qur'anê, merheleyên di alema manewî de û kemalata di nîhayeta van de, ji bo xwe bi mijar dike.

*Ğaye'ya tesewwufê, exlaqê xweş; yanî xesletên ulwî yên her wekî merhemet, şefqet, comerdî, efûkarî û şukirê di mûmînî de bi lezzet bike.*

## D. ĞAYE'YA TESEWWUFÊ

Dema em li mijara berfereh û tarîfa tesewwufê dinêrin em dibînin ku wê ji bo însanî ğayekeke zehf mûhîm û mezin ji xwe re bi destûr kiriye. Ev ğaye, "bi awayê sipehîtir û bifeyztir evdînî-kirina ji Xuda re ye" ku ew ji pêğemberên pêşîn heta bi temamê pêğember û ewlîyan wekî rojê di asîmanê dilê wan de mewcûd bû. Ew bi vê hêla xwe ğaye'ya ğaye'yan e, emanca emancan e. Yanî ji bo bi awayekî kamil qezenckirina rizaya Heq, divê mirov ji îllet û nexweşîyên manewî xilas bibe û para xwe ji exlaqê Xuda û Pêğemberê wî wergire. Yanî mirov nefsa xwe ji hukmên dînî re ram bike, îbadetan ji rewşa otomat rizgar bike, bi hesta **îhsan**ê bigihîne, berê dilê xwe bide ser îstîqameta mezinatîyên manewî û di encamê de jî bi qelbekî selîm bi rizaya îlahî nail bibe, bigihe.

Tarîxa însanî bi caran ev heqîqet raxistiye ber çavan ku însan heybereke ku bi cewhera esilîya xwe di mezinatîya "**ehsenê teqwîm**" (bi şereftirînê heyberan) de ye. Lêbelê dema ew ji ğaye'ya aferîna xwe re bi biyanî û ecnebî bibe û ji îstîqametê cuda bibe hingê dibe ku ew ji sifetê « بَلْ هُمْ أَضَلُّ » yanî "**ji heywanan jî hê nizmtir in**"[59] re rûbirû bimîne.. Tekane kartêkera ku şeref û qîmetê di însên de dîyar dike, **îman** e. Piştî îmanê jî **exlaq** tê. Wezîfeya pêğemberan ya tezkîyê jî ew e ku mirov karibe însanan di vê mezîyetê de tezyîn bike.

Ewlîyaûllah ku ji warisên Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- in û ew îlmê batinî (qelbî) yê ku ji serkehnîya nebewî ya feyzdar wergirtine jî di vê wezîfeya Resûlûllah de di meqamê weraset û wekaleta wî de ne.

Ew mirovên ku di rêya tesewwufê de birêve diçin, di her hal û hereketên xwe de hewl didin ku tam bi Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bend

59. Eraf, 7/179.

bin ku ew navenda fezîletên zahirî û batinî ye. “Rîcalê manewî” (dostên Heq) jî ku berê wan didin ser vê rê, ew jî bi vî awayî dibin ku barê xizmeteke ku Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li vê alemê îfa kiriye, hil didin ser pişta xwe. Hem jî ew di nav bicihkirina hukmê vê hedîsê: “*Alimên rastîn warisên pêğemberan e*.”[60] de cihê xwe digrin.

Ji lewma ew kemala manewî ya ku meqsûda tesewwufê ye, mirov dikare bibêje; tezahura wê ğaye û emancê ye ku Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- dixwest wê di însanan de bicih bike. Wekî ku malûm e, ev ğaye jî ev e ku mirov karibe însanan di zemîna îmanê de ji xuyên nefsanî û xirab rizgar bike û bi exlaqê hemîde bigihîne, yanî bi kemala manewî û xuyên sipehî bilind bike..

Cenabê Heq, di hedîseke qudsî de wiha dibêje:

“*Ev dînê ha ez ji bo zatê xwe pê razî bûme. Bes comerdî û exlaqê xweş ji vî dînî re çêdibe. Heta nîmeta peyrewbûna vî dînî ji we re were lutfkirin, her bi van herdu xesletan îkrama wî bikin*.”[61]

Li ser vî esasî exlaqê xweş ê tesewwufê; ew e ku xesletên ulwî yên her wekî merhemet, şefqet, comerdî, efûkarî û şukirê di mûmînî de bi lezzet bike.

Awayekî din yê emanca tesewwufê ev e ku destê arîkarîyê ji bo wan mirovên xwedî îstîdad dirêj bike, bi qasî îstîdada xwe di rêya zuhd û teqwayê de însanî bide tekamulkirin; însanî di rêya bûna însanê kamil, însanê mûkerrem, însanê ku bi durustî xwe û Rebbê xwe nas dike, neşweya nêzîkbûna xwe ji Heqq diçêje, bi mûqawemet-kirina li dijî dijminê nefsa xwe ji Rebbê xwe re dibe dost de qutkirina merhele û qunağan teşwîq dike.

Cenabê Heq di Qur’ana Pîroz de dibêje:

إِنَّا عَرَضْنَا الأَمَانَةَ عَلَى السَّمَوَاتِ وَالأَرْضِ وَالْجِبَالِ فَأَبَيْنَ أَنْ يَحْمِلْنَهَا
وَأَشْفَقْنَ مِنْهَا وَحَمَلَهَا الإِنْسَانُ إِنَّهُ كَانَ ظَلُوماً جَهُولاً.

“**Me emanet li asîmanan, li erdê û li çîyayan teklîf kir lêbelê wan xwe nedane ber qebûlkirina vê teklîfê û ew jê** (ji berpirsîya vê) **tirsîyan. Însanî**

60. Ebûdawud, Îlm, 1.
61. Heysemî, Mecmauz-Zewaid, VIII, 20.

**ew li xwe bar kir. Bi rastî ew, zehf zalim û zehf cahil e**."[62] wekî ku di vê ayetê de jî hatiye gotin emanca tesewwufê ev e; wî însanê ku di nav fisqê de digevize ji sifetên "**zulim**" û "**cehalet**"ê de rizgar bike û bi huwîyeta însanê kamil bigihîne. Dijberê "**Zulim**"ê "**adl**" e. Yanî salihbûna amelên evdî ye. Dijberê "**Cehl**"ê jî "**îlm**" e. Ji bo însan karibe bibe alimê rastîn bi qasî îlmê zahirî divê ew ji bo îlmê batinî jî bibe xwedî.

**Îmam Ğezalî** -rahmetûllahî eleyh- gotiye:

"*Weresetû'l-Enbîya ew kes in ku ji bo îlmê zahirî û batinî (qelbî) xwedî bin*."

Bi xilasîyê gihiştina însanî, bi xwe paqijkirina wî ji sifetên xirab ên di nefsa wî de bend e. Bi vî awayî bi "amelê salih" wergerîna amelên wî ve, bi şexsîyet qezenckirina îlmê wî ve, yanî bi îrfanê wergerîna îlmê wî ve bend e. Ha tesewwuf ji xwe re bi ğaye û emanc kiriye ku wan edeb û ruknên ku vê temîn dikin werin fehmkirin û werin jîyîn.

Ewlîya'yên ku vê ğaye û emancê bicih dikin, yanî ew welîyên ku Cenabê Heq ji bo xwe bi dost dikin, însanên cihêwaz in ku di îman û teqwayê de kemalê dijîn. Cenabê Heq ji wan wiha behs dike, dibêje:

أَلا إِنَّ أَوْلِيَاءَ اللَّهِ لا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلا هُمْ يَحْزَنُونَ.
الَّذِينَ آمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَ.

"**Bizanin ku tirs ji dostên Xuda re nîn e. Ew ğemgîn jî nabin. Ha ew, ew kes in ku îman anîne û bi teqwayê gihane**."[63]

Ew îmana ku di qelb de tezahur dibe, bendeyî ji hemû bawerîyên pûç û batil rizgar dike, ji Heq nêzîk dike, teqwa jî qelbî ji masîwa paqij dike. Bendeyekî wiha êdî qelbê wî sifetê nezargeha îlahî qezenc dike. Ew ji hikmet û sirrên îlahî re dibe mekanê tecellîyan.

62. Ehzab, 33/72.
63. Yûnus, 10/62-63.

“**Ew roj, ne mal feyde dide ne jî ewlad. Lêbelê ewên ku bi qelbekî selîm** (bi dilekî tertemîz) **werin cem Xuda, mûstesna ne**.” 64

## E. PÊWÎSTÎYA BI TESEWWUFÊ

Tesewwuf, dilê dîn, jîyana wî û cewhera wî ye. Aynî wekî doşava di fêkîyekî de ye ku ew jî wî bi meqbûl û lezzetdar dike.

Wekî ku malûm e însan, du alîyên wî hene, yek jê beden e, yê din jî rûh e. Ji bo van herduyan jî hinek taleb û xwestek mewcûd in ku bi fitretê re bend in. Îslam, van temayulên ku ji xulqiyetê tên, înkar nake. Her yekî ji wan wek waqîayekê qebûl dike. Îslam hewl dide di çarçoveya endazên bingehîn ên ku li holê datîne de temayulên meqbûl bide înkîşafkirin, temayulên merdûd jî daxîne sînorê biçûktirîn, yan jî wan bixe ber fermana ğayekeke meqbûl.

Heke însan di çarçoveya îcab û îhtiyacên bedenî yên xwe de dinyayekê damezirîne û rabe taleb û daxwazên rûhî yên ku aîdê ulwîyatan e serkut bike, ne mûmkin e ku ew bi hizûr û aramîyê bigihe. Dîn, ji însanî re bernameyeke hevkêşîyê di navbera madde û maneyê de teqdîm dike. Dema ew ji alîyekî ve berê însanî dide ser keş û hewaya manewî ji alîyê din ve jî îcabên alema maddî redd nake. Ew li temayulên maddî yên însanî maneyeke mûcerred û ğayekeke bala zêde dike. Heke însan sirf di plana çerm de bimîne û bi awireke materyalîst li her tiştî binêre, ewê bûyereke mûcerred jî di qalibên mûşexxes û bêgîyan de bibîne. Di esilê xwe de di tesewwufê de yek ji temayulên serekeyî ku di bingeha îtîrazan de cih digre jî ev e.

Bi rastî îdraka însanî, bi qasî heyberên maddî û mûşexxes, bi sirrên manewî û heqîqetên mûcerred jî meclûb e. Bi vê sebebê hemû kar, wekî pêkhateya maddîya însanî di tetmîn-bûn, yan tetmîn nebûna gîyanê wî de jî tên bi bişkok-kirin.

64. Şûera, 26/88-89.

Rojava'ya ku îro di zirweya refaha maddî de dijî, di nav buhranên gîyanî û jihevketinên exlaqî de ber bi ateîzmê ve tê kişkişandin. Heta li Roma'ya ku navenda Krîstîyanîyê bi xwe ye jî gellek ateîst mewcûd in. Lewra ev însan ji tetmînbûna birçîtîya gîyanîya xwe mehrûm in. Di bingeha vê de jî ev heye; serkehnîya îlahî û îrtîbata qelbî ji hev qut bûne. Lewra ew dînê ku bi destê însên hatiye tehrîfkirin û bi desttêwerdana beşerî şekl û awa jê re hatiye dayîn, ji ber ku berraqîya îlahî ya xwe winda kiriye, êdî ji wê mûhtewaya giyanî ya ku ji hizûra dilî re bibe medar pirr dûr maye. Bi vê sebebê jî ew dilên ku hest bi heyecana dînî nakin, ji hizûr û aramîyê re bi hesret dimînin..

Ew însanê ku ji wecda dînî, yanî ji heyecana manewî mehrûm be, ew li bûyera gîyanîya mûazzemtirîn jî bi çavekî maddeperest dinêre, hewl dide kar sade birijîne ser şekl û awa. Bi vî awayî têgihiştina dînekî zipziwa û nav-valakirî li holê datîne.

Herçî tesewwuf e, ew berê însanî bi ser rûh û gîyanî ve dide. Ew ji bo gîyanî rêya tetmîneke vedike ku ew ji amadehî û îstîdada ferdî re guncaw be. Bi rastî dema enîya manewîya dîn ku gîyanê însanî tetmîn dike ji holê were rakirin, hingê ew bi derekeya sîstemên beşerî hatiye nizmkirin ku sirf li ser esasê feydê hatine damezirandin. Di vê rewşê de bûye ku di jîyana îbadet û evdînîyê de sade qîmet bi alîyên menfîeta zahirî û dinyayî hatiye dayîn û ew ji ğayeya esilî ya xwe ku îstîfadeya qelbî ye, mehrûm hatiye hiştin. Mesela êdî bûye ku dîn emanca esilîya xwe jidest daye, ew bi plana menfîetên di dereceya duduyan de hatiye guhastin; êdî nimêj bûye bi antrenman, rojî bûye bi parêz, zekat jî bûye bi hevkarîya sosyal.. Bi vî awayî ğayeya esilîya wî hatiye berterefkirin. Êdî însan bi îbadetên xwe nagihîje meqamê evdînîyê û ew bi dilaramîyê nagihe. Awayekî din ê jidestdana cewhera van îbadetan heye ku ew beskirina bi qismê zahirî yê şertên pêwîst ji bo edakirina van îbadetan e. Ji xwe eşkere ye ku ev jî wê têgihiştineke ji cewhera dîn dûr û ğeyrê îslamî hasil bibe, evê nikaribe bersiva îhtiyacên gîyanê însanî bidin û evê nikaribe hesta fitrî ya dîn tetmîn bike.. Rêya dan qezenckirina kûrahîyeke qelbî bi wezîfeyên dînî, terbîya tesewwufî ye. Însan, ji bo bi kûrahîya di dîn de bigihin berê xwe dane ser hinek lêgerîn û berê-xwe-danan û di encamê de bi terbîya tesewwufî gihane.

❁

Ji bilî van jî, ji ber ku heyber ji besîttirînê wan heta bi mûkemmeltirînê wan di rêzebendîyekê de hatine danîn "însan" zirweya wan pêktîne. Îstîdad

û îqtîdarên mirovan jî ku xwe bi sermayeyên fitrî dispêrin sewîyeyên zehf cuda cuda erz dikin. Ev jî ji bo dabînkirina ahenga îctîmaî di jîyana dinyayê de zerûrî ye.

Cenabê Heq wek mûqtezaya mirada îlahî ya xwe însan hem bi îstîdadên zahirî yên wan, hem jî bi îstîdadên manewîyên wan di sewîyeyên cuda cuda de aferandine. Çawa Xuda ji taqeta bendeyên xwe zêdetir ji wan nexwestiye, aynî wisan wî bi qasî îstîdada ku daye wan jî ew berpirs girtine.

Ellah Teala rahma wî ji ğezeba wî zehftir e. Merhemeta wî hemû mexlûqatan dide ber xwe, li ser tevan şamil tê. Bi vê sebebê dema Cenabê Heq teklîfên dînî teqdîr û dîyar kirine ku hemû însanîyet ji bicihanîna wan mûkellef û binbar e, sewîya esğerî û biçûktirîn esas girtiye. Yanî ew bi siwîyekeke wisan sînordar kirine ku bendeyê bêçaretirîn jî karibe wan eda bike, taqeta wî ji wan re têrê bike. Lêbelê girtina derîyê înkişafa manewî li ber kesên ku qudret, îştah û amadehîya wan heye û ew dikarin bi fitreta xwe ji mûkellefîyetên aîdê amîyan hê bêhtir bicih bînin wê ji edaleta îlahî re berevajî be, ji bo mirovên wiha jî di îstîqameta îhtiyacên rûhî yên wan de hebûna rêyekê tebîî û zerûrî ye.. Yanî ji bo wan mûmînên ku îstîdada wan hebe bi îlawe li ser wezîfeyên şer'î di alema qelbî de bilind bibin jî hinek derî vekirine da ku ew bi zuhd, teqwa û îhsanê di rêya rêveçûna cem Xuda de mesafê wergirin. Ev rê jî wekî ku tê zanîn **tesewwuf** e.

Ev rasteqîne jî, ji mesnedên aqilî û dînî yên pêwîstîya bi tesewwufê ne.

❁

Bi îtmînanê gihana dilî, yanî bi hizûr, sikûn û seadetê gihiştina dilî, bi wê sewîya maneyî ve bend e ku pê gihabe. Ji bo vê jî pêwîst e ku bende di terbîyekeke manewî re derbas bibin. Lewra bi îlm û hikmetê tijebûna dilî, dîtina heqîqetên bilind ên dînî û ji hêla maneyî ve jî tekamul-bûna bendeyî, bes di encama hinek amelîyan de mûmkin dibe.

Çawa ew pêğemberên ku wek nimûne ji bo beşerîyetê hatine şandin jî berî ji wehyê re werin bi mûxatebkirin di pêvajoyeke amadekarîyê de hatine derbaskirin. Lewra ji bo dil, bi rewşeke wisan were ku tecellîyên manewî yên letîf bigre, divê ew ji kesafetê paqij bibe, hessasîyetê qezenc bike û bi qiwameke dîyar bigihe. Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- berî bi

pêğembertîyê were peywirdarkirin jî ew li Şikefta Hîrayê diket îtîkafê[65]. Mûsa -eleyhisselam- berî axaftina xwe bi Cenabê Heq re bike, li Tûra Sînayê çil rojan ketibû cure riyazatekê. Yûsuf -eleyhisselam- berî bibe sultanê Misrê diwazdeh salan li zîndanê mabû. Ew li wir, di hemû pêvajoyên êş, rîyazat, mûcahede û meşeqqetan re hatibû bûrandin. Bi vî awayî dilê bimbarekê wî ji ğeyrê Xudê, ji hemû îstînad û têkilîyan bi temamî hate qutkirin.

Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- berî derkeve Mîracê ji sirra Sûretê Înşîrah re bû mezher. Singa bimbareka wî hate qelaştin û qelbê şerîfê wî hate şûştin. Ew bi rûhanîyeta îlm û hikmetê hate tijekirin. Lewra ewê li Mîracê bi bûyerên ecaîb û ğeraîb re rûbirû hatiba, wî yê esrarê îlahî û menzarayên letîf ên ku bi kesafeta beşerî nayên dîtin, temaşe bikira.

Haleveku Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- ji hemû însanên ku heta niha hatine û çûne û ewên ku hê werin jî diltemîztirîn bûye. Heta kafiran bi xwe jî ev qebûl dikir. Digel vê jî ji ber ku selteneta Rebbê aleman û esrarê îlahî wê jê re hatibana şanîdan ew dubare di amelîyeke manewî re hate derbaskirin. Bûyera "**Şeqqa Sadrê**"[66] waqî bû. Ha ev jî giringîya jîyana dilî îfade dike. Ew pêğemberên ku bi sifetê îsmetê yanî guneh nekirinê hatibûne mûcehhezkirin jî digel ku ew letîf bûne jî dîsa ji bo qebûlbûna wan li hizûra îlahî ew di tesfîyekeke qelbî re hatine derbaskirin.

Heke ew pêğemberên ku bendeyên bijardî yên Xuda ne jî di tesfîyekirina qelbî re werin derbaskirin, naxwe derdikeve holê ku çi qeder zehf îhtiyaca mirovên din bi paqijbûnîya dilî heye. Lewra bi dilekî kesîf kes nikare xwe ji

65. **Îtîkaf**: Li deverekê xwe girtin û wextê xwe bi îbadetê bûrandin e. Bi taybetî jî di rojên dawîya Remezanê de xwe li mizgeftê girtin û xwe bi îbadetê dan e.
66. **Şeqqa Sadrê**: Ev amelîya ku melaîket pê rabûne, jê re "**Şerha Sadrê**" hatiye gotin. Singa şerîfa wî hatiye qelaştin, hatiye ferehkirin û aramî, sekînet û nûra îlahî têde hate danîn. Pêğember - sellellahû eleyhî we sellem- sê caran ketiye bin qelaştina singê. **Cara yekê**; dema temenê wî çar salî bûye. Bi saloxên van hedîsan; du perçeyên reş ji dilê wî hatine avêtin, aramî û hizûr di şûna wan de hatine danîn. (Binêrin. Ahmed, IV, 184-185; Îbnû S'ed, I, 112.) **Ya duduyan**; dema ew di deh salîya xwe de bû pêkhatiye, ji dilê wî kîn û hesûdî hatiye bi derxistin, di şûna wan de şefqet û merhemet hatine danîn. (Binêrin. Ahmed, V, 139; Heysemî, VIII, 223.)
**Ya sisêyan**; berî ew biçe Mîracê pêkhatiye, dîsa qelbê wî hatiye qelaştin, ew bi îman û hikmetê hatiye tijekirin. (Binêrin. Buxarî, Bed'ul-Xelq 6, Enbîya 22-43; Mûslim, Îman 264.)
Ev ayeta ku tê, wê amelîyê îşaret dike ku li ser Mezinê me Resûlê Ekrem hatibû tetbîqkirin û wiha pêde diçe, dibêje: "**Ma me ji bo te dilê te ne vekir û fereh nekir?**" (Înşîrah, 94/1)

Letîfî nêzîk bike. Ewê ku bêhvila wî hessasîyeta xwe jidest dabe, nikare para xwe ji bêhna gulê, yan jî qerenfîlê wergire.

Bi vê sebebê ji bo zêdebûna hessasîyeta manewîya dilî û ji bo dil bi rewşeke wisan were ku karibe sirr û hikmetên îlahî wergire, zerûrî ye ku ew ji kesafetê were paqijkirin û letafetê lixwe bike.

Cenabê Heq gotiye:

“**Ew roj, ne mal feyda dide, ne jî ewlad. Lêbelê ewên ku bi qelbê selîm** (bi dilekî tertemîz) **hatibin cem Xuda, mûstesna ne**.”[67]

Heke dil bi terbîya manewî safîyetê qezenc bike, ewê bibe qelbekî selîm.

Ew cihê ku têde derya bi sêlh û qûmê re bi yek dibe, di navbera sêlhê de kevirên şahîk ên bêasteng û kelem peyda dibin her wekî ku ji xerratxanê derketibin. Bi sedên salan ji terefê pêlên avê ve hatine lêdan, ji kelemên xwe hatine paqijkirin, hatine bicîlakirin, şahîk û hilû bûne, ji bilî vê jî wekî granîtê (kevir-ğarî) hatiye bi sağlemkirin.

Her wiha ye madeneke pirlanta’yê xam jî, berî ew were birrîn û awa pê were bexşîn, berî lêdana gellek kêran û mehareta hostayî lê were emilandin, ewê nikaribe berraqîyet û şeffafîyetê qezenc bike. Ji bo bidestxistina tuxtek (gramek) zêr belkû îcab dike mirov tonek ax serad bike. Yanî her heyber di encama cure terbîye û hûrkolînekê de nirx û biha qezenc dike.

Ha ji bo qelb bi wesfa “**selîm**”a ku di ayetê de hatiye gotin bigihe ihtiyaca wî bi terbîyê heye.

Lewra qelb berî terbîya manewî bibîne, wekî hesinê sar e. ji bo ew wî şeklê ku tê arzûkirin wergire, pêşî divê ew di nav agirî de were bi semağkirin, ew ji jengar û qirêjên xwe were paqijkirin, ji hişkbûnîya xwe derkeve û nerm bibe û were lêdan. Bes ew di piştî van pêvajoyan de dikare bi wê rewşê were ku wî şeklê tê arzûkirin wergire. Aynî wekî vê heta ev amelîye tev neyêne tetbîqkirin, kemalata qelbî jî tehqîq nabe. Piştî kemalata qelbî tehqîq bibe jî vêca ew alema heqîqetan ya ku bi çavên serîyan nayên dîtin û bi aqil nayên îdrakkirin jî hingê wê bi zewq werin fehmkirin û wê bi dil jî werin hisskirin. Ji bo vê jî divê mirov taqet û dîrayeta qelbî kamil û tekûz bike.

67. Şûera, 26/88-89.

Mesela bizaveke ku dema mirovekî asayî û jirêzê wê biceribîne, wê bibe sersebeb ji bo şikestina hestîyên wî. Lêbelê sporvanek, werzişvanek di encama antrenmanên dirêj de dikare bi hêsanî wê bike. Ev, ji bo di nuqteyeke tenê de himbizkirin û teksîfkirina hêza temamê bedenê encam e. Aynî wekî vê îcab dike ku qelb jî di zikrê Cenabê Heq û mehebbeta Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de himbiz û xurt bibe..

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ إِذَا ذُكِرَ اللَّهُ وَجِلَتْ قُلُوبُهُمْ وَإِذَا تُلِيَتْ عَلَيْهِمْ آيَاتُهُ زَادَتْهُمْ إِيمَانًا وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ.

“**Mûmînên rastîn ew kes in ku dema Xuda tê bibîranîn dilên wan dilerize, dema ayetên wî ji wan re têne xwendin îmana wan zêdetir dibe û ew sade xwe dispêrin Rebbê xwe**.”[68]

Ji bo qelb bi vê rewşê were, zerûrî ye ku ew ji masîwa were paqijkirin û ji hêla maneyî ve jî kamil bibe. Lewra ew dilê xam ê ji kesafetê tije, îrtîbata wî bi awayekî layiq bi Xuda re ne mûmkin e.

Zarokekî dibistanê ji kitêbên ku bi xwendekarên hiqûqnasîyê têne xwendin tiştekî fehm nake. Lewra zêhnê wî hê bi wê qiwam û kemalê negihaye. Îhtiyaca wî bi tehsîlekê heye ku ewê bi salan dewam bike. Aynî wekî vê talîm û terbîyekeke qelbî jî heye. Qelbekî ji kesafetê tije, hê nehatî paqijkirin zehf zor e ku hûrahî û ziravîyên di rêya gihiştina bi Xuda de îdrak bike.

Ji ber ku meqbûlîyeta bendeyî li cem Xuda hê bêhtir bi înkîşafa qelbî ve bend e, ji bo gihiştina dil bi kemalê jî bi tena serê xwe îhtiyaca wî bi perwerdeyeke manewî heye. Navê vê perwerdeyê jî tesewwuf e.

Bi rastî her kar di qelb de bi bişkok dibe û Cenabê Heq, di îbadet û bizavan de giringîyê pê dide ka hê bêhtir dil di kijan wesfê de ye.

Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Xudê Teala li bedena we û li dîmena we nanêre, lêbelê ew li dilê we dinêre*.”[69]

68. Enfal, 8/2.
69. Mûslim, Birr, 33.

Mesela heke mirovek xwarinê bixwe bi qesda ku bedena wî xurt bibe ji bo îbadetê ji Xuda re bike û ji bo xizmetê bike, ha ev jî ji bo wî dikeve ber hukmê îbadetê. Ew kesê ku kar û xebatê dike ji bo rizqê jin û zarokên xwe ji helalîyê qezenc bike, ew bi her gava ku diavêje sewabê qezenc dike û xwedan xêr dibe. Lewra nîyeta wî li ser xêrê ye ku ew amelê qelbî ye.

Cil û berg jî wekî vê ne. Mesela şaş dana serê xwe ji sunneta senîyye ye. Lêbelê ew kesê ku şaşikê bide serê xwe, divê jîyana diliya xwe jî bide înkîşafkirin, bi sifetên exlaqî yên wekî şefqet û merhemetê bi lîyaqeta temsîla vê sunneta şeklî bigihe. Heke na, çawa şekl tenê têrê nake, ew dikare însanî bajoyê ser ûcbê (xwe ecibandinê) jî.

Hezretê **Yûnus Emre** çi xweş dibêje:

*Heke derwêştî bi tac û xirqê bibûya*
*Heta me jî ew bi sihan, bi çilan werdigirt*

Dîsa aynî wekî vê di Îslamê de tesettur jî, yanî xwe nixumandina jinê jî şert e. Lêbelê çawa ew bi şeklê xwe mestûre û nixumandî be divê ew bi rûhê xwe jî mestûre û nixumandî be. Heke qalibê derveyî bi tesettur be, lêbelê rûh tazî be, yanî ğafil û bê terbîye be di zorkirina şertan de yan jî di gava firsend dîtina nefsê de ew tesettur bi dawî dibe. Ji bilî vê jî divê jin di bin tesettura xwe de jî mîsyona xwe ya jinîtîyê winda neke. Lewra tenzîma malê û zurrîyet ji jinê re hatiye bi emanet-kirin. Ji bo vê di her mijarê de jiyana dilî pirr giring e. Tabîî ye ku divê şekl jî bi jiyana dilî re beraber be. Mûmînek nikare derkeve tixûbên tesetturê yên ku Xuda ew danîne. Lêbelê sirf tesettur tenê jî ne her tişt e; ew bes beşek ji fermanên îlahî ye.

Mesela, dan çêkirina mizgefekê jî hesenateke zehf mezin e. Lêbelê heke di wî kesê ku mizgeftê dide çêkirin de kemala dilî nebe, heke ew di nav ğurûr û kibrê de pesnê xwe bide bibêje; “ez çêdikim, ez dikim” û bi vê di xwe de halên xwe ecibandinê bide xuyakirin -Xuda hafiz be!- ev xêra mezina wî tê bibiçûk xistin.. Lewra ewê ku dibêje: Ez” Heq Teala wî biçûk dike, zelîl dike. Ewê ku dibêje; “ev lutfa te ye, ya Rebb!” jî Xuda wî mezin dike. Ji bo vê ew tişta ku bizavên însanî bi meqbûl dike, hessasîyetên dilî ne.

Ji ber vê tesewwuf, maneya wê terbîya dilî ye, hîç ti zemanekî giringîya wê di jiyana însanî de nayê înkarkirin. Lewra her ew e, ya temîn dike ku her bizav bi wecda îbadetê û her îbadet jî bi riqqeta qelbî were îfa kirin. Bi rastî du alîyên îbadetan hene ku her yek ji wan ya din temam dikin; yek ji wan şekl

e, ya din jî rûh e. Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de şertên zahirî yên îbadetan, hijmara rek'atan û yên wekî van nade zanîn. Lêbelê ew dide zanîn ka divê ew bi kîjan keyfîyeta rûhî û hessasîyeta dilî werin edakirin. Em dikarin terefê bi sûretê îbadetan re elaqedar jî ji sunneta seniyye hîn bibin.

❁

Herçî qismê zahirî yê îbadeta ye, serokê mûnafiqan Ebdûllah bin Ubey bin Selûl jî ew dikir. Ew dihate Mizgefta Nebewî û bi şekl û sûret li pey Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nimêj dikir. Yanî heta mûnafiqek jî dikare qismê zahirî û şeklî yê îbadetan bike. Ev jî şanî dide; ew îbadetên ku sirf bi şekl têne kirin li dev Xudê Teala ti nirx û qîmetek ji wan re nîn e. Meqbûlbûna îbadetê bi mûşterekbûna şekl û rûh ve bend e.

Çawa dema em wan ayet û hedîsên ku bi ruknên Îslamê yên wekî nimêj, rojî, zekat û hecê re elaqedar bi awayekî giştî hûr dikolin hîç jî ne zor e ku em vê heqîqetê bibînin. Ji navbera van ruknên Îslamê di ayeteke pîroza ku bi nimêjê re elaqedar de Xudê Teala wiha dibêje:

"… **Bêşiwar nimêj, bêheyatî û xirabîyan asteng dike**."[70] Lêbelê heke însanek hebe, digel ku nimêj bike jî dîsa ew xwe ji xirabîyan neparêze, maneya vê wî ew nimêja xwe bi "xuşû"ê eda nekiriye.

Cenabê Heq di bara wan kesên ku dilê wan ji xuşûê mehrûm be û ew sirf bi şekl tenê nimêj dikin de wiha gotiye:

"**Xwelî li wan nimêjkeran be ku ew nimêja xwe bi awayekî ğafilane dikin!**"[71]

Dîsa Cenabê Heq di ayeteke din de dibêje:

"(Lêbelê) **Ew mûmînên ku di nimêjên xwe de xwedî xuşû ne, bi rastî bi xilasîyê gihane**.."[72]

Bi mûqtezaya ayetên pîroz yek ji sifetên mûmînên ku bi xilasîyê gihane jî bi xuşû kirina nimêjê ye. Ji bo mirov karibe bi maneya kamil nimêjê eda bike, divê mirov temamê şertên zahirî û batinî yên nimêjê bicih bîne. Du kes di aynê zeman û mekanî de aynê nimêjê dikin, lêbelê çêdibe ku di navbera van herdu nimêjan de bi qasî navbera erd û asîmanan ferq hebe.

70. Enkebût, 29/45.
71. Maûn, 107/4-5.
72. Mûmînûn, 23/1-2.

Ev gotina Mezinê me Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî:

“*Kesek nimêj dike; lêbelê ji wê nimêja wî bes nîvê wê, yan sêyeka wê, yan çaryeka wê, yan pêncyeka wê, yan şeşyeka wê, yan heftyeka wê, yan heştyeka wê, yan nehyeka wê, heta bes dehyeka wê jê re tê nivîsîn*.”[73] destnîşan dike ku divê tişta di nimêjê de were rîayetkirin keyfîyeta qelbî ye.

Cenabê Heq, dema di Qur’ana Pîroz de wesfên mûmînan dijimêre, wiha dibêje:

“**Û ew kes in ku li ser kirina nimêjên xwe berdewam dikin**.”[74]

Hezretê **Mewlana** di bara maneya zahirîya vê ayetê de bi îlawe li serê wek îşaretkî jî:

“*Piştî nimêjê jî ew li ser halên xwe yên di nimêjê de berdewam dikin*.” wiha dibêje:

“*Ew nimêja ku rêya rast ji me re şanî dide, nahêle em xirabîyan bikin, rojê pênc caran, tê kirin. Haleveku evîndar tim di nimêjê de ne. Lewra evîna di dilên evîndaran de û ew mehebbeta îlahî ya ku kezeba wan dikizirîne, ne bi pênc wextan tê gihiştin, ne jî bi pênsed hezar wextan derbas dibe û diçe*.”

Hezretê **Yûnus Emre**, nimêja evîndarên ku dilên wan ji ğefletê şîyar dibe, wiha teswîr dike, dibêje:

*Evîn ji me re îmam e; dil e, cemaet*
*Rûyê dost qible ye; daîmî ye, selat*

Bi rastî wextê kirina nimêjekê kêm-zêde deh-pazdeh deqîqe ye. Piştre jî lazim e ku mirov qelbê xwe wekî di nimêjê de mûhafeze bike. Lewra ew qelbê ku neyê mûhafezekirin di ğefletê de noq dibe; piştî demekê jî bi alîyê fisqê ve heta -Xuda hafiz be- dibe ku bi alîyê kufrê ve jî bişemite. Bi vê sebebê însan, divê ne di nimêjê de jî qelbê xwe bi Cenabê Heq ve meşğûl bike, divê hîç ji wî ğafil nebe.

Ehlê ğefletê jî ji xwe ji wextê li derveyî nimêjê neke behs, heta ew di nimêjê bi xwe de jî nikarin qelbê xwe kom bikin û heta li hizûra îlahî bi xwe nikarin bi xeşîyet xwe stûxwehr bikin. Çawa ev qisseya ku vê mijarê îfade dike, çi qeder îbretdar e:

73. Ahmed bin Henbel, Mûsned, IV, 321.
74. Mûmînûn, 23/9.

Derwêşek di rêya kemalatê de bipêşve diçû, bi şev li mizgeftê nimêj dikir. Baranê destpê kir û tund barî. Ji bo kurtedemekê heta di nimêjê de jî berê dilê derwêş çû ser mala wî. Ew dem ji nava wî dengekî ew wiha şîyar kir:

“-Ya Derwêş! Bi vê nimêja ku te kir, te ji bo me tiştek nekiriye! Lewra te ewê sipehî (dil) yê di xwe de şande malê, te bedena xwe jî li vir hişt!..”

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîf de wiha gotiye:

“*Çendîn nimêjker hene ku ji nimêja dikin bes para wan, xew li xwe birin e.*”[75]

Di encamê de hemû kar, diçe digere û tê, xwe bi îhtiyaca gihana qelbî dispêre.

Rewş di îbadetê rojîyê de jî ji rewşa di nimêjê de ne cuda ye. Yanî divê mirov bi rîayetkirina esasên zahirî û batinî yên wê rojîyê bigre.

Rojî îbadetekî wisa ye ku gunehan xîç dike û li ber xwe dibe. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

“*Kî fezîleta wê bawer bike, hemberê wê ji Xuda hêvî bike û wisan rojîya Remezanê bigre, gunehên bûrî yên wî têne efûkirin.*”[76]

Ğaye û emanca rojîyê, ne birçî-kirin e. Cenabê Heq bi vê ayeta pîroz îfade dike ku emanc ji rojîyê gihiştina teqwayê ye:

“**Gelî yên ku îman anîne! Wekî ku rojî li ser wan ummetên berî we hatine û çûne hatibû ferzkirin, wisan ew li ser we jî hatiye ferzkirin. Hêvî heye ku hûn bibin xwedî teqwa**.”[77]

Bi vê nêrînê rojî îbadetekî wisa ye ku divê sade ne mîde tenê lêbelê temamê endaman digel qelb têde pişkdar bibin. Qelb, divê nîmetên ku Xuda dane tefekkur bike û nifûzê li kûrahîya rûhanî ya rojîyê bike.

Rojî perwerdeyeke manewî ye ku di însanî de hissên wekî merhemet û şefqetê dide înkîşafkirin û xuyakirin. Heke ev hest di mirovê rojîgir de nayên ğeleyanê, maneya vê ew rojîyê di şekl û sûretî tenê de digre. Ji xwe nexasim di esnaya vê îbadetê de gotegot û ğeybet kirin, îmhakirina feyz û sewaba rojîyê ye.

75. Ahmed bin Henbel, Mûsned, II, 373.
76. Buxarî, Sewm, 6.
77. Beqere, 2/183.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Gellek rojîgir hene ku ji wê rojî girtinê, ji wan re sade birçîbûnî û tîbûnî dimîne*.”[78]

Ev jî şanî dide ku di rojîyê de jî îhtiyac bi jiyana qelbî û rûhî heye.

Di îbadetê zekatê de jî ku ew tezahura dîgerğemîya mûmînî ye, hessasîyeta qelbî giringîyeke gewre û mezin erz dike.

Cenabê Heq, dema di Qur’ana Pîroz de wesfên mûmînan dijimêre, gotiye:

“**Di malên wan de ji bo parsek** (ewên ku dikarin îhtiyacên xwe erz bike) **û mehrûmî** (ewê ku nikare halê xwe erz bike) **heqek heye**.”[79]

Heke pêkhatina rûhî ya mûmînekî xurt be, dema ew zekata malê xwe dide her wekî ne ku zekata malê xwe dide; lêbelê her wekî ku heqê hewcedar û mehrûman yê di nav malê xwe de ji wan re îade dike, bi awayekî wisan memnûn heta şukirdarane zekata malê xwe dide û bi fezîleta rasteqîneya zekatê digihe. Lewra ew kesê ku zekatê werdigre, ji bo kesê ku zekatê dide di bicihanîna îbadetekî ferz ê wî de dibe arîkar. Zekatwergir ji bo zekatbexşî dibe wesîle û navgîn ku ew li dinyayê ji qeza û belayan were parastin û li axretê jî bi nîmetan bigihe.

Mûmînekî kamil ji bo ji sirra vê hedîsa şerîf re:

“*Bêşiwar sedeqe berî bikeve destê hewcedarî, dikeve destê (qudreta) Xuda*.”[80] bibe mezher, malê ku ew dide, bi fîraseta ku ew di rastîyê de dixe destê qudreta Xuda, hereket dike. Ev jî zemîneke derûnî ye ku kemala îbadetê temîn dike.

Tabîî ye ku ev nezaket jî bi kemala qelbî mûmkin e. Heta mezinên me, tişta ku înfaq kirine, ew xweşik xemilandine, bi pakêt kirine û bi îtîna dane hewcedaran. Lewra înfaq pêşî bi Xuda digihe, piştre jî ewê ji hewcedarî re întîqal bike, here. Ev ji bo jîyîna Îslamê ya bi nezaket û riqqeta qelbî, tezahurên zarîf in.

78. Ahmed bin Henbel, Mûsned, II, 373.
79. Zarîyat, 51/19.
80. Taberanî, Mûcmeû’l-Kebîr, IX, 109.

Cenabê Heq bi gotina: "..**Xuda sedeqeyan werdigre**.."[81] vê edeb û nezaketê îşaret dike ku divê di înfaqê de were şanîdan.

Li alîyê din sedeqe-dayîneke ku ji vê hessasîyeta qelbî mehrûm be, bi uslûbeke ew qeder rencîdekar tê dayîn her wekî ku ew bi kevçî bide û bi dûvikê wî jî çavê wî bipeqîne, bi destê xwe îmhakirina ecra înfaqa xwe ye. Lewra Îslam, tîpê însanekî nezan, xwedğem û hov redd dike. Misliman, însanekî hessas, nazik, diltenik û dilovan e. Ev jî tim bi sewîya qelbî ve bend in.

Ev ziravîyên qelbî di îbadetê hecê de hê bêhtir derdikevin pêş. Îbadetê hecê wisan dixuyê ku şeklê zahirî û terefê bedenî yê wê girantir e. Her wekî îhram, tewaf, weqfa li Erefatê, serjêkirina qurbanê, çûna Mûzdelîfê. Ev jî sade terefê sûretî yên hecê ne. Dema em li alîyê pêkhatina manewî ya hecê dinêrin, qiyamet û roja mehşerê têne bîra me, em tefekkura hesabê, mûhasebeya emr û temenê bûrî, dibînin.

Mûmîn li mizgeftê cudahîya meqam-mewqî û zengînî û feqîrtîyê li ber çavan nagrin, di heman sefê de mil bi mil nimêj dikin. Digel vê jî mirov dikare li cil û bergên wan binêre, kêm-zêde mewqîyê wan di jîyana civakî de û sewîya refaha wan fehm bike. Lêbelê li hecê ev jî nîn e. Bi mîlyonan însan adeta kefen li xwe kirine û ferqa rutbeya dinyayî û apoletê bi temamî ji holê hatiye rakirin. Berê hacîyan bi ziravîyeke qelbî, zarafet û zengînîya hestan ve hatiye dayîn. Heta hinek tiştên meşrû jî di îhraman de hatine qedeğekirin. Mesela jêkirina giya, kuştina heywanan, bi nêçîrkirina nêçîrê, heta ji nêçîrvanî re nêçîr şanîdan jî hatiye qedeğekirin. Axaftinên pûç û meşğûlîyetên nelazim hatine menkirin, bi vî awayî hatiye bi hedefkirin ku hessasîyeta qelbî sewîyekeke bilind qezenc bike.

Îbadetê qurbanê jî di zahirê xwe de failîyeteke mûşexxes lazim dike. Lêbelê wekî ku di îbadetên din de wisa ye, tişta ku qurbanê jî bi meqbûl dike, nîyet e ku ew bi xwe jî amelekî qelbî ye. Di vê mijarê de fermanên îlahî pirr in. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

لَنْ يَنَالَ اللَّهَ لُحُومُهَا وَلا دِمَاؤُهَا وَلَكِنْ يَنَالُهُ التَّقْوَى مِنْكُمْ.

81. Tewbe, 9/104.

“**Ne xwîna wan, ne jî goştê wan bi Xuda digihe; lêbelê bes teqwaya we bi Wî digihe**.”[82]

Çawa em ji ayeta pîroz jî fehm dikin; dema tu bitirsî ku heke ez qurbanê serjê nekim wê derdorên min, min eybdar bikin, yan jî heke tu bi hizrên wekî van qurbanê serjêkî ne mûmkin e ku tu bi van cure hizran rizaya Cenabê Heq tehsîl bikî.

Çawa ku yek ji herdu kurên Hezretê Adem -eleyhisselam- Qabîl ji mijara ku qedeğeyê bi ser xwe de bavêje, qebûl nebûna wê qurbana ku wî pêşkêş kiribû, di hemberê vê de jî qebûl bûna wê qurbana ku Habîl bi semîmîyet ji Xuda re pêşkêş kiribû, şahideke dîtira vê heqîqetê ye.

Di Qur’ana Pîroz de ev bûyer wiha tê vegotin:

“**Ji wan re xebera herdu kurên Ademî bi rastîn bixwîne; dema herduyan qurbanên xwe** (ji Xuda re) **pêşkêş kiribûn, vêca qurbana yekî ji herduyan hatibû qebûlkirin û qurbana yê din jî nehatibû qebûlkirin.** (Birayê ku qurbana wî nehatibû qebûlkirin ji çavnebarîya xwe, ji birayê xwe yê ku qurbana wî hatibû qebûlkirin re) **Got: «Sûnd be, ezê te bikujim!» Wî yê din jî jê re got**: «**Bi rastî Xuda, bes ji mutteqiyan qebûl dike**.»”[83]

❁

Çawa ji van tevan jî tê fehmkirin; gihiştina îbadetan bi wesfên “meqbûl” û “salih” bes bi gihana/kemala qelbî û dîrayetê mûmkin dibe. Di vê rewşê de ev heqîqet hasil dibe ku berî her tiştî tesfîyekirina qelbî ya bi terbîya manewî, elzem e.

Lêbelê îcab dike ku mirov maneya vê jî baş fehm bike. Lewra endîşeya bi xuşû û teqwayê nekirina îbadetê û bi sebeb tehlûka riyakarîyê -çendan biqusûr be jî- terkkirina amelên ku têne kirin bi ti awayan ne rast, ne durust e. Ne terkkirina amelên ku têne kirin, lêbelê heta ku mûmkin be, lazim e mirov hewl bide wan bi hessasîyetên qelbî yên her wekî îxlas, xuşû û teqwayê bi kemalê bigihîne.. Lewra rêya manewîyatê bi dijwarî û çetînîyan tije ne. Ew mûcadele û têkoşîna li dijî temayulên nefsanî pêwîst dike. Bi yekcarî û bi awayekî besît bi encamê nayê gihiştin. Xuşû, di bilindbûnîyeke manewî de zirweyek e.

82. Hac, 22/37.
83. Maîde, 5/27.

Hilgerîna zirweyê jî gav bi gav e. Di vê rê de hem bikaranîna îradeya beşerî, hem jî niyazkirina lutf û kerema Cenabê Heq lazim e.

Ji ber ku îstîqameta qelbî çawanî û keyfîyeta amelan dîyar dike, lazimîya tesewwufê jî tam eşkere li holê ye ku ji xwe hedefa wê jî ev e; îstîqameteke kamil bi qelbî bide qezenc-kirin. Bi vê nêrînê, ferfitîna wan derdorên ku tesewwufê redd dikin û hewl didin dînê pîroz ê me wek menzûmeya qaîdeyên rijî û ziwa bibînin û arzû dikin ku wî bi vî awayî pêşkêş bikin, heta tu bibêjî bes, manedar e!

Xeta, şaşî, çewtî, sûîstîmal û îstismar wekî ku di her qadan de çêdibe hebin, mûmkin e ku ew di zanist û îlmê tesewwufê de jî çêbibin. Ev çewtî û îstismar ji terefê ehlê wan ve zehf bi hêsanî dikare ji hev û din werin temyîz-kirin û veqetandin. Lêbelê wek berhema bêaqilîyekê ye ku hinek mirov bi qesd van çewtî û îstismaran wekî ku di îlmê tesewwufê tenê de hebin, wisan şanî didin. Haleveku tesewwuf jîyana qelbî ya dîn e, hem jî ew bi vê behaneyê hewl didin ku tesewwufê red û înkar bikin û hewl didin ku lawazî û xetayên beşerî ji dîn re yan jî ji esilê tesewwufê re bi mal bikin. Yanî hinek mirov hene ku ji bo arzûyên suflî yên xwe tesewwufê îstismar dikin, li alîyê din jî hinek mirov hene ku li ser îstîqametê dewam dikin. Vêca bi sebeb hebûna mirovên ku tesewwufê îstismar dikin redkirin û înkarkirina tesewwufê bi ti awayekî mentiqî îzahat jê re çênabe. Ev rewşa îstismara di tesewwufê de aynî wekî vê rewşa îstismara tibê ye ku hinek mirov hene ji bo hinek ğaye û emancên çewtên xwe bijîjkîyê bikar tînin. Çawa çewt e ku yek rabe bi sebeb îstismarkaran zanista bijîjkîyê bi temamî red û înkar bike, aynî wisan bi sebeb îstismarkaran bi temamî red û înkarkirina tesewwufê jî wisan çewt û şaş e!. Têgihiştineke wiha, yan mehsûla hizreke zehf ğafilane ye, yan jî mehsûla ramaneke zehf nîyet-xirab e.

Hîç ne mûmkin e, mirov li tetbîqata hinek însanên bêlîyaqet, yan jî nîyet-xirab ên ku zen dikin tesewwufê dijîn, binêre û tesewwufê bi wan fehm bike. Lewra ji ber ku tesewwuf, ne bareke ku her şehîn û qentar karibe wê bikişîne, naxwe ew ferqa mûezzama ku di navbera mûhtewaya bizavên hinek mirovên na-ehl û esilê kar de dertê holê, dema mirov bi pîvanên însaf û mentiqê lê binêre, mirov dikare bi awireke seresereyî û sethî jî wê fehm bike..

Ne mûmkin e ku mirov karibe bi pîvanên hovane tesewwufê fehm bike. Lewra tesewwuf, bûyereke asoya dilî ye, xerca bingehîna wê jî evîn û hezkirin e. Çi qeder ew, ji însanên ku ji hezkirinê bêpar in, re were vegotin jî feyda

nade. Ji bo korekî ji zikmakî tarîfkirina rengan çawa hewldaneke bêfeyde be, vegotina tesewwufê ji bo mirovên ji mehebbet û hezkirinê mehrûm re jî aynî wisan hewdaneke bêfeyde ye.

Însan çi qeder ji tefekkura alema hundurîna xwe dûrkeve, ew qeder ji bo bûna otomat û teqlîdkarîyê mehkûm dibe. Ew însanê ku bi awayekî xurt nikaribe xwe di alema rûhanî ya di hundurê xwe de noq bike, ewê ku nikaribe wê nas bike û ewê ku ji feyzê mehrûm be, ew mirovên li hawîrdorên xwe her teqlîd dike. Ew xwe bi ber cereyana giştî ve berdide. Ew nikare şexsîyetek û karektêrekê şanî bide.

Gihiştina wusleta îlahî, bi serweta dilî, bi devjêberdana şohret û endîşeyên dinyewî mûmkin dibe.

❁

Tesewwuf, di heqîqetê îlmê însanî ye. Ew însanê ku ji alemê biselixe û di rûhê xwe bi xwe de kûr bibe, bi derîyê seraya hikmet û heqîqetan digihe. Mûtesewwifên heqîqî Qur'ana Pîroz fehm dikin û wê wek rêya rastîna îmanê dijîn. Mûtesewwif ew însan e ku li pêşberî Xuda, xwe ji jîyîna dînî ya civaka ku têde ye, berpirs û mesûl hiss dike, dizane.

Ji dostên Heq Hezretê Necmeddînê Kubra bi şagirtên xwe re di cenazeyê zatekî salih de pişkdar dibe. Di wê esnaya ku telqîn dida meyîtî de Hezretê Necmeddînê Kubra tebessum dike. Şagirtên wî ji tebessuma seydayê xwe ya di demeke wiha de heyret dikin û hikmeta vê jê dipirsin. Hezret naxwaze hikmeta tebessuma xwe ji wan re vebêje. Lêbelê çi dema şagirtan israr kir, ew ji wan re wiha dibêje:

"Dilê ku telqînê dide ğafil e; mirîyê ku diçe qebristanê jî sipûsağ e. Ez ecêbmayî mam çawa mirovê ğafil telqînê dide însanekî bi dilê xwe zindî."

Ha rewşa wan mirovên ku bi navê îlmê tesewwufê red û înkar dikin jî bi qasî rewşa ku yê mirî telqînê dide yê sağ heyretamîz û bi sosret e. Lewra di dirêjahîya tarîxê de serkeftina ehlê tesewwufê di xizmet û hewldanên xwe yên ji bo zindî girtina jîyana dînî, ji bo guhastina wê ji bo nifşên nûhatî, ji bo îrşada xelkê, ji bo teblîğa Îslamê de li ber çavan e..

Çawa **Mûhemmed Hemîdûllah** ku yek ji girgirekên alimên Îslamê yên di sedsala bûrî de ye, vê rastîyê wiha îfade dike:

"Terzê perwerdebûna min aqilparêzî ye. Xebat û hûrkolînên hiqûqî, her tiştê ku bi awayekî pêbawerker neyên tarîf û îsbatkirin bi min didin redkirin. Bêşiwar ez wezîfeyên Îslamî yên her wekî nimêj, rojî û yên wekî van ne bi sebebên tesewwufî, lêbelê bi sebebên hiqûqî îfa dikim. Ez ji xwe bi xwe re dibêjim:

"Ellah Rebbê min e. Xwediyê min e. Wî kirina van li min ferman kiriye. Naxwe divê ez van bikim.  Ji bilî vê jî heq û wezîfe bi hev û din ve bend in. Ellah fermana van li min kiriye ji bo ez îstîfade bikim; naxwe ez peywirdar im ku jê re şukir bikim."

Ji dema min destpê kiriye ez li devereke wekî Parîsê li nav civaka Rojavayî de dijîm ve, ez bi heyret dibînim ku qebûlkirina krîstîyanan ya Îslamê; tişta ku wan diajoyê ser qebûlkirina Îslamê, ne dîtin-nêrînên alimên fiqh û kelamî ne, lêbelê sofîyên her wekî Îbnûl-Erebî û Mewlana ne. Di vê mijarê de çavdêrîyên min bi xwe jî hene. Dema di mijareke Îslamî de îzahek ji min tê xwestin, cewaba ku ez bi delîlên aqilî didim wan, wê pirsker tetmîn nedikirin; lêbelê îzaha tesewwufî, di dana fêkîyê xwe de dereng nedima. Di vê mijarê de her ku diçû min hêza xwe ya tesîrkirinê jidestda. Ez vêga bawer dikim ku di piştî îstîla û dagirkerîyên Hûlagû yên ku wêran kirine û şewitandine de wekî ku di zemanê Ğazan Xan de jî wisan bû, îro jî ji hindikahî ve li Ewrûpa û Afrîqayê tişta ku xizmetê ji Îslamê re bike, ne şûr e, ne jî aqil e; lêbelê qelb e, yanî tesewwuf e..

Di piştî vê çavdêrîyê de min destpê kir, hûrkolîn li ser hinek berhemên ku di bara tesewwufê de hatine nivîsîn, kir. Vê, çavên dilê min vekirin. Min fehm kir ku tesewwufa di zemanê Hezretê Pêğemberê me de û rêya mûtesewwifên mezinên Îslamê, ne meşğûlbûna bi peyvan ve bû, ne jî meşğûlbûna bi tiştên bêmane ve bûye; lêbelê di navbera însan û Xuda de rêveçûna di rêya kurttirîn de bû, gerîna li rêya bipêşvebirina şexsîyetê de bû.

Însan, li sebebên wezîfeyên ku lê hatine barkirin, digere. Di qada manewî de îzahatên maddî me ji hedefê dûr dikin; lêbelê îzahatên manewî ne, ewên ku însên tetmîn dikin."[84]

84. M. Ezîz Lahbabî, Şexsîyetparêzîya Îslamê, werg. Î. Heqqî Akin, rûp. 114-115, jêrenot 8. Îst. 1972. Ev jêrenot, metina wê mektûbê ye ku Mûhemmed Hemîdûllah di 27ê Rezbera 1967'an de ji bo wergêrî nivîsandibû. Ji bilî vê jî binêrin. Li Mûstefa Kara, Bi metinan bizavên tesewwufî yên roja me, rûp. 542-543.

Çawa ji van îfadeyan jî tê fehmkirin, reddkirina wê tesewwufa ku mûtabiqbûna wê bi Qur'an û Sunnetê re mûtleq e, kevir avêtina dara fêkîbexş e, û webalê wê giran e.

Hezretê Mewlana dibêje:

"*Heke bêhvila te bêhnan nake, tu qebahetê nexe stûyê gulê*."

Alîyekî din ê giringîya tesewwufê di roja me de jî ew metod û uslûb e ku ew di îslahkirina mirovan de dişopîne. Şerîata şerîf hem ji bo dinyayê, hem ji bo axretê bi mûkafat û mûcazatê mirovan bi îstîqamet-kirinê motîve dike, diajoyê. Tesewwuf jî hezkirin, şefqet û mehebbetê bikartîne. Di zemanê me de însan bi pirranî di nav buhrana rûhî ya dûrketina ji dîn û kirina gunehên giran de ne. Hîç ti kes nikare înkar bike ku ji bo mirovên wiha bi rêya ef, mûsameha û şefqetê pêşkêşkirina derfeta îslah û rizgarîyê hêsantir û zêdetir mûmkin e. Bi vê nêrînê, zemanê me dewreke wisa ye ku bi qasî heqîqetên tesewwufî qaîdeyên usûlî yên wê jî giringîyeke mezin hildigirin. Çawa tê mûşahedekirin; ew kesên ku bi awira ef, mûsameha û şefqetê dinêrin di fitûhata manewî de hem li welatê me, hem jî li alema Rojava bêhtir mûqtedir û serkeftî ne. Ji bo gîyanên ku di sulteya aqil û nefsê de tengav bûne, pêşkêşkirina Îslamê ji wan re wek tesellîya nefheyeke îlahî di şûna ceza-danê û bi hêrsê ji wan nêzîkbûnê, bikaranîna şefqet û merhemetê her dem metodeke bi feyztir e.

Bi vê nêrînê tesewwuf dibîne ku bi pirranî mirovan bûne zebûnên gunehên giran û wan wek berhema bêmehebbetîyê (bêevînîyê) werdigre, ew bi vê dîtin-nêrîna bingehîna xwe, ew qaîdeyên usûlî yên ku wê danîne, di roja me de ji bo teblîğa îslamê berhemdartirîn wesîteyan pêktîne. Lewra însan tim û daîm bêrîya hemêza mehebbeta dostên Heq ên wekî Ebdûlqadir Geylanî, Yûnus Emre, Behaeddîn Neqşîbend û Mewlana, dikin.

Ev mîsal, ji ber ku vê hesret û mehebbetê dide xuyakirin ji bo diqqetê şayan e:

Bîrmendê mezinê Pakistanî Mûhemmed Îqbal ku evîndarekî Mewlana ye, dema ew tê Tirkîyê, bi ketina firokê ji bo qada hewayî ya Tirkîyê ew radibe ser xwe, wextekê wisan çavnêrî kiribû. Mirovên li cemê jê dipirsin:

"We çima wiha kir?"

Ew jî vê bersiva manedar dide:

“Ev ax, ew axa pîroz e ku qebra Hezretê Mewlana lê ye. Ew milletê ku li ser vê axa pîroz dijî jî milletekî wilo ye ku bi salan parêzgarî li Îslamê kiriye. Heke milletê Tirk nebûya, Îslam li girava Erebistanê tenê dihat hebiskirin. Ji ber vê ye ku di dilê min de hem li hemberî Hezretê Mewlana, hem jî li hemberî milletê necîbê wî rêz û îhtîrameke bêdawî heye. Ji lewma ez ji ber rêzgirtina xwe ji wan re rabûm ser pêya.”

Ev mîsala mûstesnaya bi mehebbet, heyranî û îhtîramê tije jî şanî dide ku Hezretê Mewlana yek ji wan şexsîyetên ender e, ewên ku tesewwufê ew gihandine, perwerde kirine, bi sed salan di piştî wefata xwe de jî bîrmendekî mezinê wekî Îqbal di bin bandora wî de dimîne, di pêkhatina şexsîyeta wî de rola Mewlana çêbûye, bi wî karîye alema dilî ya xwe bi xesletên wekî evîn, mehebbet, ziravî, letafet û marîfetê tezyîn bike, bi vê nêrînê ev heqîqeteke mûstesna ye ku pêwîstîya bi tesewwufê radixe ber çavan.. Ew heqîqeteke wisa ye ku ji rojhilat heta bi rojava çendîn dilan bi mehebbetê dikelîne, tekûz dike û bi zirwe dike!.. Heqîqeteke wisa ye ku dorê li sed salan û nifşan digre!..

**Tesewwuf; mûzeyyenbûna bi îlmên zahirî û heqîqetan û di keş û hewaya dil de gihiştina bi wêdetiran e.**

## F. MÛNASEBETA TESEWWUFÊ BI ÎLMÊN DIN RE

Ew zanist û îlmên ku wek encameke tebîî ya hesta tecessusê di fitreta însanî de yanî meraqa hûrkolîn û lêgerînê derketine holê, li ser wan qanûn û qaîdeyên bi heqîqetên qada xwe re aîd lêgerînê dikin. Lêbelê di esnaya vê lêgerînê de -bivê nevê- di wê qada ku ew bi xwe pê ve meşğûl dibin de bi çendîn nuqteyên hevbeş û mûşterek ên digel tesewwufê digihin ku ew bi perspektîfeke giştîtir û ji cîhetê "hikmet"ê ve wan nuqteyan dixe ber dest û lêgerînê. Ev keyfîyet û çawanî sade ne bi îlm û zanistên dînî taybet e, lêbelê ev li ser îlm û zanistên fennî yên ku hûrkolînê li ser taybetmendîyên fîzîkî yên kaînatê dikin, li ser hunerên sipehî yên ku hilberana fitretê selîm in û di nuqteyekê de li ser felsefê jî şamil tê.. Bi vê sebebê em dikarin bi kurtî mûnasebeta tesewwufê bi îlm û zanistên din re di pênc kategorî û beşan de tehlîl û analîz bikin.

### 1. TESEWWUF Û ÎLMÊN ÎSLAMÎ YÊN DIN

Ğeya û emanca dîn; aferînerê însanî jê re bide naskirin. Ji însanî re wezîfe û mûkellefîyetên wî li hemberî Rebbê wî bide zanîn. Mûnasebetên beşerî yên însanî di îstîqameta mirada îlahî de li ser dadwerî, heqqanîyet, sulh û aramîyê tesîs bike, damezirîne. Hedefa tesewwufa îslamî jî mûmînî, bi wê keyfîyeta qelbî û qiwama manewî bigihîne ku karibe van hemû mijaran cihbicih bike. Ew ji ehkamên zahirî yên dîn re zemîn û pêgeheke manewî pêktîne, wan amelên ku îcaba wan ehkaman e jî bi rîayetkirina vê naveroka manewî û îfakirina wê bi awayekî kamil dabîn û temîn bike. Li ser vî esasî zehf tebîî ye ku tesewwuf xusûsîyetekê bi îlmên îslamî yên dîger re tevlîhev, erz dike. Ji bo mirov vê rastîyê bi awayekî eşkeretir bibîne, bi kurtî behskirina ji mûnasebetên di navbera van îlm û zanistan de wê bi feyde be.

### a. Tesewwuf û Kelam

Îlmê kelamî, wek mewzû berî her tiştî ji zat û sifetên Xudê Teala û ji wehdanîyeta wî behs dike. Ji ber ku bi îlmên îslamî yên bi eqaîdê re elaqedar e, wek giringtirîn (eşrefê îlman) îlm tê qebûlkirin. Ğayekeke îlmê kelamî jî îsbatkirina heqq û redkirina batil e. Bi vê wesîlê yek ji emancên Îslamê jî bersivdana wan tenkîd û îtîrazên ku li îslamê têne kirin e, û îqnakirina însana bi vê ye ku Îslam dînê heq e.

Hedefa tesewwufê jî bi qelb naskirina Xudê Teala ye ku ew bi sifetên kemalê mûttesif e, ji sifetên nuqsanîyan mûnezzeh û mûteal e, yanî marîfetûllah e.

Îlmê kelamî, hewl dide kîtab û sunnetê esas bigre û bi navgîna aqil mûşkilên bi eqaîdê re elaqedar çareser bike. Bi vê nêrînê, heke çi qeder alimên kelamî bişibihin fîlozofan jî lêbelê ji ber ku ew nikarin aqil ji “ness”ê mûsteqil bifikrin, wî di çarçoveya meşrûîyetê de bikartînin. Feqet di alema sebeban de ji ber ku aqil ji eserê ber bi mûessirî ve di xîjka îdrakê de bipêşve diçe, ew di gihandina însanî ya bi heqîqetê de bi tena serê xwe tenê têrê nake. Naxwe di dereceya zerûretê de îhtiyac bi dîtin û hissên qelbî jî heye.

Ha ji te re tesewwuf, ew di meseleyên ku aqil ji wan re kafî nayê de qelb dixe dewrê û bi teslîmîyetê li ser rêya xwe berdewam dike. Ew van meseleyan, wekî tecellîyên di qelb de bi îlham û keşfên bi Qur’an û Sunnetê re mûtabiq bi eşkerebûnê digihîne. Ew, bi vî awayî takekesî bi tetmîna nîhaî digihîne.

Îhtiyaca bi failîyeta qelbî, keyfîyeteke ku ji terefê alimên kelamî ve jî hatiye qebûlkirin. Bi vê nêrînê, wekî ku me li jorê jî îfade kir; ne rast e ku mirov alimên kelamî wekî fîlozofan wergire ku ew bi pirranî aqil esas digrin. Di esasê xwe de ev jî rastîyeke tarîxî ye ku di navbera fîlozofan bi xwe de jî gellek kes hene bi fiêl, yan jî bi fikr dîtin-nêrînên tesewwufî durust didêrin û wan îcra dikin.

Li alîyê din aqil û failîyeta zêhnî ya ku jê re mûhakeme tê gotin, wan întîbaan bikartîne ku ji alema maddî hatine wergirtin. Ew hewl dide bi xêra lihevçû û hevdijan bi heqîqetê bigihe. Haleveku bi aqil gihiştina heqîqet û heyberên metafîzîk ên ku ji întîbaayên wiha re nabin xwedî, ne mûmkin e. Ji ber vê ye ku aqil dikare di pîvaneke diyarkirî de meyla însanî ya bi gihiştina heqîqetê, tetmîn bike. Ji bo kemala vê tetmînkarîyê jî, ji nuqteyên ku aqil xilas dibe biwêdetir bi îlham û sinûhatên di qelbî de ku ew merkeza tehessusê ye,

digihe heqîqetê. Ha tesewwuf, di nuqteyên ku aqil xilas dibe de ranaweste, lêbelê îmkana gihiştina hê bipêşveyan jî dide qezenckirin. Vê, bi xêra zikrûl-lahî, yanî bi çêkirina pêgeheke ji îlhama qelbî re mûsaid, temîn dike. Bi vê sebebê ye ku tesewwuf, bêkîfayetîya di bikaranîna aqil de ku îlmê kelamî -di serî de jî- zat û sifetên Cenabê Heq ku ji xwe re bimijar kiriye û di hemû qadên din ên ku ji xwe re bi mewzû kirine de jî îzale dike, vê failîyeta îlmî jî bi kemalekê digihîne ku însanî tetmîn bike.

❁

Tesewwuf, heqîqetên ku îlmê kelamê ji bo amîyan li holê danîne -ji ber ku amadehîya her feredekî ji ya ferdê din cuda ye- bi sewîyekeke wisan tîne ku ferdê ji her ferdan amadetir jî pê tetmîn bibe. Ew bawerîya ferdî bi sağlem dike û di mijara hebûn û yekbûna Xudê Teala de jî wî bi zanîna yeqînî digihîne.

**Fexreddînê Razî** ku wek tefsîrzanekî kelamzan meşhûr bûye, vê heqîqetê wiha tîne zimên:

“Metodên kelamzanan ji bo gihiştina heqîqetê heke çi qeder bêkîfayet bin jî lêbelê ji bo çûna tesewwufê gava pêşîn e ku heta bi dereceya dawîn mûhîm e, her divê ew were derbaskirin. Însan nagihîje dereceya kamilê jî heta ew ji îlmên şerîatê yên ku pişta xwe bi zahirê dispêrin derbas nebe û neçe wan îlmên batinî yên ku pişta xwe bi zanîna heqîqetên bûyeran dispêrin.”[85]

## b. Tesewwuf û Tefsîr

Îlmê tefsîrê, îlmekî wisa ye ku maneyên fereh ên wê Qur’ana Pîroza ku wek rêbera hîdayetê ji beşerîyetê re tê pêşkêşkirin, dertîne holê û îzahkirina wan ji xwe re bi mijar dike. Tefsîr bi vî alîyê xwe, ji bo tesewwufê wezîfeya dermanxaneyekê dibîne û jê re derman û receteyan pêşkêş dike. Tesewwuf, bi temîzkirina alema hundurîna însanî û gihandina wî bi kemalê ji xwe re bi hedef dike. Lewra îlmê tesewwufê, dema mijarên ku dixe ber behsê diemilîne û dema usûlên bi xwe taybet dîyar dike wek jêdera bingehîn Qur’ana Pîroz esas digre.

85. Mûhemmed Salih ez-Zerkan, Fexreddîn er-Razî we araûhû’l-Kelamîyye we’l-Felsefîyye, rûp. 76. (Mûhemmed Abid el-Cabirî, Pêkhateya Aqilî ya Kultura Îslamî-Erebî, rûp. 626 hatiye guhaştin.)

Qur'ana Pîroz, ferman dike bende di her qada jîyanê de bi hesta berpirsîya li hemberî Xuda bizav bike, îbadetan bi xuşûê eda bike, zehf zikrê Xuda bike û tim û daîm di bin mûraqeba îlahî de bibe. Bi vê jî dixwaze bende bi rizaya îlahî bigihe. Ev mijar hemû xusûsên giring in ku ehlê tesewwufê bi hessasîyet li ser wan rawestîyane.

Ehlê tesewwufê ku bi qelb gihiştina Xuda ji xwe re bi emanca bingehîn kirine, dîsa wek tekane rêya ku wan bigihîne wî jî Qur'ana Pîroz dîtine û ew ji bo xwe bi mihwera jîyana xwe kirine. Wan, ew ayetên Qur'anê ku bi kûr kûr tefekkur û tedebburkirina li ser wan ferman hatiye kirin jî ji bo xwe bi wirdên wextê seherê kirine. Bawer kirine ku ji bo ew maneyên hûr ên wê fehm bikin jî zerûrî ye ku ew qelbê xwe bi safîyetê bigihînin.

Ji ber ku exlaqê Mezinê me Resûlê Ekrem ji Qur'ana Pîroz îbaret bû, ehlûllah ên ku tekamulbûna exlaqî ji xwe re bi hedef kirine, ğeyret şanî dane ku hemû amel û bizavên xwe li gorî naveroka kelamê îlahî tenzîm bikin û her cehd û hewl dane ku ew bibin Qur'aneke zindî..

❁

Bi sebeb ku jêdera serekeya feyz û îlhama ehlê tesewwufê Qur'ana Pîroz e, mûtesewwifan xizmeteke mezin ji îlmê tefsîrê re jî kirine. Wan maneyên îşarî yên ayetan derxistine holê û ji bo zengînbûna vî îlmî jî bûne arîkar. Dikare were gotin; bi cîhetê vê nêrînê mezinên tesewwufê, xwe di deryaya fereha peyvên tefsîra Qur'anê de noq kirine, hewl dane çendîn hikmetan jê derînin û ew li ser giringîya vê rawestîyane. Di vê meyanê de ne rast e ku mirov naveroka kelamê îlahî di tengîya peyvên beşerî de hebs bike. Lêbelê divê neyê zenkirin ku ev failîyet jî bêsîstem û bêqaîde ye. Dema mirov maneya îşarî bide jî divê ev hersê mijar li ber çavan werin girtin:

**1. Divê maneya îşarî bi maneya zahirî re tezadê/nakokîyê teşkîl neke,**

**2. Divê maneya ku tê dayîn di nav mûhtewaya Kîtab û Sunnetê de be,**

**3. Divê lefzên ji bo maneya îşarî bi sîyaq û sîbaqê re ahengsaz bin.**

Mirov dikare ji bo berhemên ku Qur'ana Pîroz bi terzeke îşarî tefsîr kirine wek mîsal navên van tefsîran: "**Heqaîqû't-Tefsîr**" ya Ebû Ebdûrrahman Sulemî, "**Letaîfû'l-Îşarat**" ya Quşeyrî û "**Rûhû'l-Beyan**"a Bûrsali Îsmaîl

Heqqî bibîr bîne. Li tenişta van berhemên mûtesewwifên wekî Mewlana û Îbnû’l-Erebî jî bi tefsîrên îşarî yên xwe gellek ayetên pîroz zengîn kirine.

Ev rastîyek e ku Qur’ana Pîroz ji bo sifetê “kelam” ê Cenabê Heq tecellî ye, ji kîjan cîhetî ve mane li wê were xistin bila mane li wê were xistin, ne mûmkin e, ew hemû maneyên ku wê îfade kirine ji bo kelamî werin guhastin. Lewra çawa bi durustî fehmkirina zat û sifetên Xudê Teala mûhal e, aynî wisan bi temamê mahîyeta wê ve fehmkirina Qur’ana Pîroz jî mûhal e. Tiştên ku em ji wê fehm dikin bes di mesabeya dilopekê ji deryayê de ye. Ev ayeta pîroz, vê heqîqetê çi xweş tîne zimên:

“**Heke darên ku li sererdê hene qelem bûna, derya jî hibr bûna û heta heft deryayên din jî li wê hatibana zêde kirin dîsa gotinên Xuda xilas nedibûn. Bêşiwar Xuda serdest û xudan hikmet e**.”[86]

Cenabê Heq, mûhtewaya peyvên xwe, bi nêrînekê derdixe ser mûhtewaya peyvên beşerî û bêdawînîya wan îfade dike adeta xwestiye ku însan nesîb û parine hê kûrtir ji wan wergirin. Çawa ku Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi van peyvên xwe:

“*Maneyên bedîî (maneyên ku berê nehatine keşifkirin) yên Qur’anê ku her gavê dertêne holê, xilas nabin.*.”[87] taybetmendî û xusûsîyetên Qur’ana Pîroz îfade kirine.

**Hezretê Mewlana** di vê mijarê de dibêje:

“*Bi weqîyek hibr nivîsandina zahirê Qur’ana Pîroz mûmkin e. Lêbelê îfadekirina hemû sirrên ku wê di nava xwe de hewandine jî heke deryayên bêkenar hibr bin, hemû darên li sererdê qelem bin jî dîsa têrê nakin.*”

Ew îfadeyên ku di ayet û hedîsên li jorê bûrîn de hatine, şanî didin ku Qur’ana Pîroz, menzûmeyeke kamila hemû heqîqetên li kaînatê ye, û hemû heqîqet her yek ji wan wek tuxm têde hene. Lewra mewcûdîyeta van cure agahî û heqîqetan di Qur’ana Pîroz de, heke bi cîhetê serahetê bûna, lazim dikir ku ew bi hicmeke bêdawî bigihin. Bi vê nêrînê, hinek heqîqet bi serahetî û pirranîya wan jî bi cîhetê delaletê (şanîdêrîyê) cih digrin. Dîtina van cure rastîyên sirrî û bi holê derxistina wan, bes di îlmê de bi bûna xwedîyê rusûxê,

86. Luqman, 31/27.
87. Tirmizî, Fedaîlû’l-Qur’an, 14.

yanî bi aqilê selîmê biîstîdad û bi çavê dilî yê ku hûrî û ziravîyan fehm dike, mûmkin e.

Wek piştbestin bi vê ğaye û emancê di kitêbên ku li ser usûla tefsîrê hatine nivîsîn de dema ew zanist û îlmên ku divê tefsîrzan wan zanibin dijimêrin, behsa "îlmê wehbî" jî dikin ku Xudê Teala ew ji bendeyên mûstesna yên xwe re bexş kiriye. Ev îlm jî bes bi teqwaya li hemberî Xuda, bi tewazûya li hemberî mexlûqatan, bi zuhdê li hemberî dinyayê û bi têkoşîneke bêeman a li hemberî nefsê dikare were bidestxistin. Çawa ev hedîsa şerîf: "*Ewên ku bi zanîna xwe amel dikin, Xuda tişta ku ew nizanin jî li wan hîn dike*."[88] vê heqîqetê destnîşan dike.

Naxwe nexweşîyên dilî yên her wekî kibr, ucb, hesed û hezkirina dinyayê ku li ber fehmkirina ayetên Xuda asteng in, heta ew bi terbîya tesewwufî û tesfîyê neyên tedawîkirin, para xwe wergirtina ji sirrên Qur'anê ne mûmkin e. Çawa ev ayeta pîroz:

"**Ezê wan kesên ku bi neheqî xwe li erdê li mezinatiyê datînin ji ayetên xwe vegerînim/bidim dûrkirin**."[89] jî bi eşkerehî vê îfade dike.

Naxwe heke bi terbîye û tesfîya manewî di alema dil de tereqqî çênebe, bi awayê layiq wergirtina para xwe ji sirrên Qur'an, kaînat û însanî ne mûmkin e.

## c. Tesewwuf û Hedîs-Sîyer

Îlmê hedîsê ew îlm e ku li ser peyv, fiêl û teqrîr ên Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-, li ser xulqiyeta wî, yan jî li ser taybetmendîyên exlaqê xweş ê wî, hûrkolînê dike.

Tesewwuf jî wekî îlmên Îslamî yên din di piştî Qur'ana Pîroz de serkehnîya duduyan ya ku serî lê dide hedîs e.. Hedîs, xwedî dewlemendîyeke wisa ye ku heyata Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi hemû alîyên wê yên maddî û manewî ve li holê datîne, fehmkirina rola mezina hedîsan di awa-wergirtin û geşbûna tesewwufê de hîç jî ne zor û zehmet e. Lewra hedîs di mijarên qelbî yên her wekî zuhd, wera, îhsan, tewazû, îsar, sebr, şukir û tewekkulê de, têgihiştina ehlê tesewwufê û bingehên fikrên wan pêkanîne. Di vê mijarê û yên wekî wê de ku ji nêzîk ve tesewwufê elaqedar

88. Ebû Nûeym, Hilye, X, 15.
89. Eraf, 7/146.

dikin û peyv û bizavên Mezinê me Fexrê Kaînatê yên ku bi jîyana rûhanîya wî re elaqedar, tesewwuf û îlmên hedîsê ji hev nêzîk kirine û ew bi tevahîyeke wisan kirine ku ji hev cuda nabin..

Di mûnasebeta tesewwufê ya digel îlmê tefsîrê de jî wekî ku hatiye îfadekirin, ğaye û emanca bingehîna ehlê tesewwufê nêzîkbûna ji Xuda û gihiştina wî ye, ji ber ku ew çak dizanin ev ğaye û emanca wan jî bes bi hezkirina ji Xuda û bi çûna li ser rêç û şopa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bicihtê, ew di her mijarê de îttîbaa wî ji bo xwe bi şîar kirine û wan di vê nuqtê de têr têr ji xezîneya dewlemenda sunnetê îstîfade kiriye..

Çûna li ser rêç û şopa Fexrê Kaînatê jî bes bi hezkirina ji wî û bi ezîztir zanîna wî ya ji her tiştî mûmkin e. Di Qur'ana pîroz de di bara pêwîstîya bi îtaet û hezkirina ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de gellek ayetên pîroz mewcûd in. Di bara gelo divê ev hezkirin û îttîbaa çawa be de jî gellek nimûneyên wan ku hatine jîyîn hene, lêbelê ew jî bes bi îstîfadekirina ji serkehnîyên hedîs û sîyerê gihiştina wan, mûmkin e.

Çi di bara îbadet û mûamelatan de be, çi jî di bara mijarên exlaqî de be, ji hêla kûrahîya qelbî, riqqet, nezaket û zarafetê ve şexsîyeta zirweyî, hîç guman nîn e ku ew Mezinê me Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Pirtûkên me yên hedîs û sîyerê bi nimûneyên bêjimar ên ku vê te'yîd dikin, tije ne.

Ew tiştên ku bi awayekî bênavber ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- heta bi me întîqal kirine, hatine sade ne peyvên mûbarek ên Wî ne. Bi heman awayî hemû bizavên wî jî heta bi teferrûatên hûr jî ji terefê eshabê kîram ve hatine guhastin û bi vî awayî jî heta bi me gihane. Mûkemmelîyeta ku di bizavên ulema, suleha û meşayîxan de tê dîtin, ew mijar in ku ji sîret û jînenîgarîya Pêğemberê Rahmê hatine hînkirin û hatine pratîzekirin. Di esasê xwe de ji ber ku Cenabê Heq, bizavên beşerî yên Mezinê me Fexrê Kaînatê ji însanîyetê re wek nimûneyeke mûkemmel pêşkêş kiriye. Naxwe bi qasî derfetên xwe teqlîdkirina wî, deyn û peywireke ku li ser her mûmînî hatiye barkirin. Bêşiwar ewên ku bi durustî ev wezîfe û peywir anîne cih, ew kesên bijarde ne, ku bi durustî ew fehm kirine û jîyana wî dane guhastin. Tekûztirîn mûhtewaya van bizavên ku her yek ji wan di bicih-hatina edeba tesewwufî de mîyar û pîvanek in, wek berhema telqînên ehlûllah peyda bûne, hatine wicûdê. Ev jî îfadeyeke durust e ku meşreba sofîyan, bi cewhera sunnet û hedîsê re di mûtabeqeteke mûtleq û mûkemmel de ye.

Ji lewma sipehîtîyên di jîyana bifezîleta ehlê tesewwufê de, her yek ji wan în‘îkas û şanîdêrek ji sîreta Hezretê Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Metinên nivîskî yên hedîsê jî wek rêgezeke temamker pêktîne. Hal û hereketên ehlê tesewwufê, şerha fiêlî ya hedîsên şerîf e. Bi îfadeyeke din, hal û bizavên ehlê tesewwufê, guhastina hedîsan ji nezarîyê ji bo amelî ye, cihbicihkirina wan di jîyana xwe de ye û dan dewamkirina wan ya di zeman û mekanên cuda cuda de ye..

Berî tesewwuf wek îlmekê derkeve holê jî kitêbên "*Kitabû'z-Zuhd*"ên ku gerek ji alîyê mûheddisan ve, gerek jî ji terefê mûtesewwifan ve hatine li qelem dan, di navbera îlmê hedîsê û tesewwufê de wezîfeya pirekê dîtine.

Li alîyê din ehlê tesewwufê, maneyên îşarî dane hedîsên şerîf û bi îzahkirina wan, îlmê hedîsê dewlemend kirine. Heta çendan hinek sofî ji terefê hedîszanan ve neyên ecibandin jî dîsa qebûl kirine ku mirov dikare bi rêya keşfê jî hedîsan ji rûhanîyeta Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wergire.

Di tarîxê de -alimên wekî Hakim, Tirmizî, Quşeyrî, Îbnû Erebî û Kelabazî- digel ku wek sofî navdar bûne jî dîsa ew mezinên tesewwufê ne, ku di bara hedîsê de jî berhem nivîsandine. Aynî wisan alimên hedîsê jî hene, digel ku wek mûheddis meşhûr bûne jî lêbelê wan li kêleka pîvanên îlmê hedîsê, metodên sofîyan jî ecibandine.

Mesela Îmam Buxarî -rahmetûllahî eleyhî- xwediyê kitêba hedîsê ku ew di îlmê hedîsê de mezintirîn otorîte hatiye qebûlkirin û di piştî Qur'ana Pîroz de jî wek mûtebertirîn serkehnîya dînî ye, ji bo her hedîsa ku rîwayet kiriye du rekat nimêja îstîxare kirine û di encama îstîxarê de jî piştî bi qelbê xwe îqna bûye ku hedîs sahîh e, ew di berhema xwe de qeyd kiriye.[90] Dîsa ji mûheddisê mezin Ahmed bin Henbel hatiye rîwayet kirine ku wî sê hedîsên şerîf di xewna xwe de bizzat ji Mezinê me Resûlûllah wergirtine.[91]

## d. Tesewwuf û Fiqh

Fiqh di ferhengê de bi maneya; zanîn, têgihiştin û fehmkirina hûrî û ziravîyan e.. Di zemanên pêşî yên Îslamê de, di her mijarên dînî û dinyewî

90. Binêrin. Îbnû Hecer, Hedyu's-Sarî Mûqeddîmetû Fethi'l-Barî, rûp. 489; Îbnû Hecer, Teğlîqu't-Ta 'liq, V, 421.
91. Binêrin. Mecmûul-Hedîs, Wereqe 110 a-112 b.

de ji bo her tiştê ku lazim bû were zanîn di bin navê fiqhê de dihate hînkirin û ji mirovên ku bi vî îlmî re dilebikîn jî **feqîh** yanî alim dihate gotin. Bi vê, maneya peyva feqîh ew kes îfade dikir ku ji hikmeta hebûn û bûyeran waqif bû û di mijarên dînî de jî karîbû babetên di leh û eleyhê de jî rohnî bike.

Çawa **Îmamê Ezam Hezretê Ebû Henîfe** fiqhê wiha dide tarîfkirin, dibêje:

“Ji hêla dînî ve naskirina însanî ji bo tiştên di lehê xwe û eleyhê xwe de ye.”

“Rebbê xwe bi durustî zanîn” ku di seadet û felaketa însanî de di dereceya yekê de kartêker e, giringtirîn beşa vî îlmî pêktanî. Bi vê sebebê ji wê metina ku Hezretê Îmamê Ezam di bara meseleyên îtîqadî de anîye holê û ji terefê şagirtên wî ve jî hatiye zebtkirin û heta bi zemanê me jî hatiye întîqalkirin re “**Fiqha Ekber**” bi maneya “fiqha mezintirîn” hatiye gotin. Digel ku di destpêkê de rewş wiha bû jî piştre di vê mijarê de bi ferehbûna failîyetên îlmî feqîhan hukmên îtîqadî û exlaqî li derveyî fiqhê hiştin û ew di hukmên amelî û qezaî tenê de hebs kirin. Îro jî maneya ku ji fiqhê tê fehmkirin ev e.

**Tesewwuf** jî hem bi cebheya zahirê wan, hem jî bi cebheya batinê wan zanîna tiştên di lehê yan jî eleyhê însanî de ye û kirina pêwîstîya wan e. **Fiqh**; şertên zahirî yên sihheta meseleyên amelî yên her wekî desmêj, teharet, nimêj û rojîyê dide zanîn. Tesewwuf jî dil paqij dike û bendeyî ji bo hizûr, marîfet û hissên qelbî amade dike. Maneya vê jî, hazirkirina zemîna mûsaidtirîn ji bo kemala îbadeta ye. Li ser vî esasî ji tesewwufê re bi maneya cewher û zemîna rûhanî ya îlmê fiqhê “fiqha batinî” yan jî “fiqha wijdanî” jî hatiye gotin.

❀

Hîç şubhe û şiwar nîn e ku ğaye û emanca îlmê fiqhê; temînkirina mûkemmelîyeta amelî ye, yanî temînkirina îfakirina amelî bi terzeke wisa ye ku ew li cem Xuda were qebûlkirin. Ji ber ku mûkemmelîyeteke wiha jî bes dikare bi gihana/kemala rûhî ya ku ramanên tesewwufî temîn kirine, were bicihanîn, îcab dike ku ev herdu îlm ji bo hev temamker werin jimartin. Lewra yek ji hedefên esilî yên tesewwufê jî bi qasî deranîna însanî ji bo zirweya metafîzîka dîn, yanî ji bo lutkeya heqîqetên rûhanî, aynî wisan bi mûkemmelîyetê gihandina hemû amel û bizavên wî ye jî. Esil ğaye û emanca fiqhê ya ku şertên zahirî yên amelan tarîf û tedwîn dikin, bes dikarin bi gihana tesewwufî werin bicihanîn.

Mesela çawa bicihanîna şertên zahirî yên paqijî û tadîla erkanên nimêjê, ji mijarên îlmê fiqhê ne. Heta di vî îlmî de pêwîstîya bi şertekî derûnî yê wekî nîyetê jî tê vegotin. Ji bo qebûlbûna îbadetê ku şertên zahirî yên wî hatibine rîayetkirin, digel elzemîya salimbûna wî ji nexweşîyên dilî yên her wekî rîya û hesedê jî fiqh bi karê tenzîmkirina vê qada manewî ve meşğûl nebûye. Tesewwuf vê qadê jî tenzîm dike û ew bi qasî bicihanîna şertên zahirî yê îbadetî, ji bo bicihanîna şertên batinî yên wî jî kar dike. Lewra îlmê fiqhê, ji bo umûma mirovan şûbeyeke şerîatê ye, û ew sirf bi zahirî ve meşğûl dibe. Mûkellefîyeta mirovan di plana şerîatê de jî ji zahirê wê îbaret e. Lêbelê heqê qebûlkirin, yan jî reddkirina îbadetan sade ya Cenabê Heq e, ew bi qasî zahirê wan li ser batinê wan jî bi awayekî mûtleq waqif e, û paqijîya batinî jî yek ji wan xusûsîyetan e ku Ew dixwaze di bendeyê xwe de bibîne..

Feqîh, hûrkolînê li ser îbadetên her wekî nimêj, rojî û hecê û mûamelatên her wekî nîkah, telaq, ticaret û qisasê dikin û hukmên wan tedwîn dikin; mûtesewwifan jî digel kartêkerên manewî yên her wekî zuhd, teqwa û îxlasê giringî bi îfakirina van dane. Aynî wisan Qur'ana Pîroz jî zehf giranîyê dide ser terefê manewî yê îbadetan û bendeyî li ser zuhd û teqwayê bi îstîqamet dike.

Tabîî ev nayê wê maneyê ku ehlê tesewwufê giringî bi fiqhê nedane, yan jî bi awayekî têr bi îlmê fiqhê re elaqedar nebûne. Tam bi berevajî vê gellek mûtesewwif ên her wekî Ğezalî, Îbnû Erebî, Mewlana Celaleddînê Rûmî, Îmamê Rebbanî û Xalidê Beğdadî di îlmên zahirî de jî xwedî selahîyet in û her yek ji wan jî alimekî mezin û fiqhzan e.

Hinek mirovên ku mûhtewaya ehkamên zahirî yên dîn jî û bi awayekî durust rastîyên tesewwufî jî fehm nekirine, îddîa kirine ku di navbera fiqhê û meşreba sofîyan de ferq û cudahîyek heye û ji ber vê jî dem bi dem îxtîlafeke ne di cihê wê de hatiye meydanê. Lêbelê di navbera mûtesewwifên kamil û feqîhên rastîn de di esasê de ti lihev-nekirinek ne mijara axaftinê ye. Îxtîlaf û mûnaqeşe, di navbera cahilên ku xwe alim zen dikin û sofîyên xam ên ku xwe kamil zen dikin de, heye.

**“Emê hê delîlên xwe ji mirovan re di asoyan; erd, asîman, cîhan û welatan de û di nefsa wan bi xwe de jî nîşan bidin da ku ji wan re tam eşkere bibe ku ev Qur’an heq e. Ma ne bes e ku Xudayê te li ser her tiştê şahid e?!”**[92]

## 2. TESEWWUF Û ÎLMÊN FENNÎ

Zanistên fennî, yanî ew zanist û îlmên ku dikarin bi mûşahedeya laboratuwarê werin îsbatkirin, -di nêrîna pêşî de- çendan bi tesewwufê re wek bêelaqe xuya bibin jî lêbelê rastî ne wisa ye.

Rêya her failîyeta îlmî û zanistî ya ku di bara hikmet û keyfîyetên bûna heyber û bûyeran de bi pey ğaye û emancekê dikevin, di dawîyê de bi nuqteyeke metafîzîkî digihin. Ev jî ew nuqte ye ku zanist û îlmên fennî û tesewwuf pev digihin. Lewra tesewwuf, sirr û hikmetên hemû heyberên li kaînatê, yanî hecm û emancên metafîzîkî yên wan wek gelemper tehlîl, tesbît û tedwîn dike. Ew însanî di bara Xuda û masîwa de dibe digihîne ser îlmekî rasttir, bişamiltir û di sewîyekeke ku îştaha tecessusa wî bide têrkirin, yanî wî dibe digihîne keş û hewaya heqîqetê.

Qada elaqedarîya îlmên fennî alema maddî ye, yanî tiştên tebîî ne. Ew rastîyên ku van zanist û îlman di heyberan de dîtine, ew xusûsîyet in ku bi tayîna îlahî di wan de hatine bicihkirin. Li gorî vê, her keşfa di alema maddî de ji bo qudret û ezameta Aferîner wek delîlekê dertê holê. Bi bizavkirina ji vir, mûmkin e mirov bibêje; îlmên fennî bi maneyekê ji bo gihiştina xarîqeyên hunerê îlahî arîkar in.

Li alîyê din Îslam, maddê jî digel hedefên metafîzîkî yên wê dixe ber destan ku îro zanistên fennî yên modern jî ji vê îzahê nêzîk bûne. Lewra her keşfa di alema maddî de rê li ber mechûlan vedike û mûfekkîreya însanî bi ber mesafeyeke bêdawî ve dikişîne. Di dawîya vê failîyeta ku bi întîbaayên alema maddî têne birêvebirin jî bi hinek bûyerên metafîzîkî re hevrû dibin. Bi

92. Fussîlet, 41/53.

taybetî di zemanên me de gihiştina van îlman ya bi nuqteyên ku aqilan bixin heyretê û wan ji xwe re heyran bihêlin, di encamê de ew bûne sersebeb ku rastîyên fîzîkî bi metafîzîkê re rûbirû werin. Ji lewma telaqqîyên materyalîst ên berê ku heqîqet sade di maddeyê de hesr kirine, adeta îflas kirine. Qanûna Lavoîsîer (Lavûazye) ku yek ji tabûyên sedsala gonê (çûyî) bûye herifîye û dîtin-nêrîna “qedîmbûna maddê” ku ji yek ji mijarên îxtîlafa bingehîna di navbera dîn û felsefê de bû jî di kewaşexanê de hatiye avêtin. Rastîya ku madde ne esil e, lêbelê enerjîyek e, sûret û tekasufeke arizî ye, bi perçebûnîya atomê hatiye îsbatkirin û bi vî awayî derketiye holê ku ew tişta jê re “madde” tê gotin ji enerjîya ku di qalibekî mûayyen de hatî hebskirin, îbaret e.. Bi îlawe li ser vê nexasim keşfên nû yên ku di fîzîk, kîmya, bîyolojî û astronomîyê de bûne sebeb ku bêjimar delîlên nû derketine holê ku dîn û -di vê navberê de jî- Qur’ana Pîroz te’yîd dikin..

Keşfên nû yên ku li ser genên însanî waqî bûne, ev rastîya ku her însanî şîfreyeke ji şexsê wî re mûnhesir heye, li holê danîye. Ev keşf û yên wekî vê, di zemanê me de nimûneyên berraq ên hunerê îlahî ne, ku aqilan bêçare dihêlin. Ji ber vê ye ku hê di sedsala 19. em de Zîya Paşa ev malika bi hikmeta xwe hûnandiye, gotiye:

*Subhane men teheyyera fî sun‘îhî’l-‘uqûl*
*Sunhane men bi-qudretihî ya‘cîzû’l-fuhûl*

“Ez Xudê Teala pak didêrim, ewê ku aqil di hunerê wî de heyirî mane. Ez Xudê Teala pak didêrim, ewê ku bi şîyan û qudreta wî alimê ji her aliman alimtir jî bêçare dimînin.”

Lewra di esasê xwe de misliman bawer dike ku mûcîzeyên kewnî yên ku li pey hev xuya dibin qut nabin, ew keşfên berdewam jî delîlên nû ne, bi awayekî wisan her nû dibin ku ji zeman, mekan, zanist û têgihiştinan re mûnasib bibin. Her keşfa nû, bêçaretîya însanî li pêşberî hunerê Aferîner û mezinatîya wî te’yîd dikin û ew nikare xwe ji vê rastîyê bide paş ku her divê hikmetên nîhaî yên di pişt wê huner û ezametê de îtîraf bike. Dîsa Zîya Paşa ev bêçaretîya beşerî, çi xweş îfade kiriye û gotiye:

*Pêwîstîya îdraka raz û nehanîyan bi vî aqilê biçûk nîn e,*
*Lewra ev terazû ev qeder giranîyê nakişîne.*

❀

Ji ber ku tesewwuf bi meqsûda îdraka sirran kaînatê tehlîl dike, di nîhayeta rastîyên fîzîkî de îlmên fennî bi xusûsîyetên metafîzîkî re rûbirû tên, bi awayekî ji awayan qebûlkirina hebûna peywendîya wan bi tesewwufê re zerûretek e.

Di esasê de Qur'ana Pîroz gellek caran balê dikişîne ser sirr û hikmetên li kaînatê. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

سَنُرِيهِمْ آيَاتِنَا فِي الآفَاقِ وَفِي أَنْفُسِهِمْ حَتَّى يَتَبَيَّنَ لَهُمْ أَنَّهُ الْحَقُّ أَوَلَمْ يَكْفِ بِرَبِّكَ أَنَّهُ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ.

**"Emê hê delîlên xwe ji mirovan re di asoyan; erd, asîman, cîhan û welatan de û di nefsa wan bi xwe de jî nîşan bidin da ku ji wan re tam eşkere bibe ku ev Qur'an heq e. Ma ne bes e ku Xudayê te li ser her tiştê şahid e?!"**[93]

Bi peyva "**asoyan**"a di ayetê de alema derveya ku dor li însanî girtiye û bi îfadeya "**di nefsa wan bi xwe de jî**" hikmet, sirr û îbretên ku di pêkhateya bîyolojîk û gîyanîya însanî de hene destnîşan dike.

Cenabê Heq, ji bo bendeyên xwe ji ğefletê derxîne û wan tam întîbah û şîyar bike, di ayetên pîroz de dibêje:

**"Ma ew, hîç li sererdê negeriyane?! Lewra heke ew gerîbûna, hemin ji wan re dilne ku bi wan têbighin û guhne ku bi wan bibihîzin dibûn. Lewra çav kor nabin; lêbelê ew dilên ku di singan de ne, kor dibin**."[94]

**"Me, erd û asîman û mexlûqên navbera herduyan jî bi leystikvanî û bêarmanc neaferandine! Me, ew herdu bes bi sebebeke rastîn aferandine. Lêbelê pirranîya wan vê rastiyê nizanin**."[95]

Cenabê Heq, piştî ev herk û darêjên qudreta xwe dane zanîn, di ayeteke din de jî dide zanîn ku wî însan jî wekî hemû heyberên din ji bo ğaye û emanceke diyarkirî aferandine. Ayeta pîroz wiha ferman dike, dibêje:

93. Fussîlet, 41/53.
94. Hec, 22/46.
95. Dûxan, 44/38-39.

أَفَحَسِبْتُمْ أَنَّمَا خَلَقْنَاكُمْ عَبَثاً وَأَنَّكُمْ إِلَيْنَا لا تُرْجَعُونَ.

**"Ma ji we were ku me hûn pûç aferandine û hûnê li me neyêne vegerandin!"**[96]

Ji mîkroyê heta bi makroyê di her zerreyê de tezahurên xarîqe yên hunerê îlahî mewcûd in. Tesewwuf, dîsîpîlîneke fiîlî û îlmî ye ku bi ramana xwe û manewîyatên xwe dikare raweyeke tevahî û şamil çêke ku heqîqetên siriştî û metafîzî yên kaînatê kom bike, ew însanî dixe navenda xwe, piştre ew vê tesewwurê realîze dike û ew bi rêya uslûbên xwe yên perwerdehî yên pêbawer; zikrûllah" û rîyazîyatên din ji asta teorîyê ji bo asta pratîkê diguhêze..

Di ayetên Qur'anê de daxuyanî û beyanat hene ku balê dikişînin ser hikmetên alema fîzîkî, piştevanîyê li wan dikin û wan bi rêya sûal û pirsê li holê datînin. Ev keyfîyet, digel ku qada failîyeta îlmên fennî elaqedar dikin, sade ne ji bo xusûsîyetên fîzîkî yên tiştan mûnhesir e. Ji ber vê, di mijara fehmkirina hikmetê de îhtiyac bi qudreteke ji selahîyet û îmkanên van îlman hê bêhtir heye. Ev jî bi temrînên rûhî, pêşvebirin û geşkirina melekeyên tehessusa dilî dide îcabkirin. Ha tesewwuf, asoyeke cihêwaz û mûstesna ye ku vê selahîyet û derfetê ji însanî re bexş dike.

Wekî ku malûm e dinya di nezara mûtesewwifan de, cihê tecellîgeha navên şîrîn ên îlahî ye. Her heybereke di navê de xarîqeyeke mezina hunerê ye. Di jîyana rojaneya xwe de gellek ji me bi hinek hadîse û bûyeran re hevrû dibin, em li ser wan nahizirin û ji wan derbas dibin; lêbelê heke di bara wan de bi cildan kitêb werin nivîsandin jî dîsa hindik e. Mesela peleke tû'yê dema ğezal wê dixwe, ew dibe misk lêbelê dema kêzik wê dixwe ew dibe hevrîşim û ermûş.. Ha kaînat, bi van xarîqeyan tije ye ku em her rojê wan temaşe dikin lêbelê em bi durustî li ser wan nahizirin. Heke bi nezara îbretê li giyayên ku şîn dibin, li çîçekên ku bel dibin û li darên ku fêkî didin were meyzandin û heke were hizirîn ku ev çawa xusûsîyetên wekî reng, bêhn û lezzetê ji axê dibînin û dişên derkevin, ne mûmkin e ku mirov li hemberê tezahurên wiha yên qudreta îlahî nekeve heyretê.. Bi kurtî mûtesewwifan, ne sade bi peyvên xwe tenê qebûl kirine ku li kaînatê hîç tiştek pûç nehatiye aferandin, lêbelê wan ev bi temamê qelbê xwe jî qebûl kirine.

96. Mûmînûn, 23/115.

Wekî Qur’an û însanî kaînat jî bi terkîba navên şîrîn ên îlahî yên Cenabê Heq hatiye meydanê. Hemû zanist û îlmên fennî bi vê nêrînê mûkellef in ku lêgerînê li ser hikmetên adetûllah bikin, ew adetûllah ku tezahurên van terkîban ên li kaînatê ne. Ew di îfakirina vê mûkellefîyetê de jî bi eczîyeteke mûtleq mehkûm in. Lêbelê ewên ku karîne ji hêla maneyî ve bipêşve herin, tereqqî bikin û ji bo cure wergirîyeke dilî û qelbî bibin xwedî ku di mijara fehmkirina sirr û hikmetên wan de dikarin ji wan pêvajoyên ku îlmên fennî pê gihane hê bi pêşvetir nifûz bikin. Ha ji nuqteyên wekî van û pê de îlmên fennî û tesewwuf pev dikelin û bi hev-aynî dibin.

"**Tesewwuf e, ya ku edebîyata Tirkî anîye holê, ew bipêşve biriye û kamil kiriye**."

(Nîhad Samî Banarli)

## 3. TESEWWUF Û EDEBÎYAT

Tişta ku tê bîra mirov; têkilîya edebîyatê bi tesewwufê re sağlem e. Ev durust e. Lewra qada esilîya failîyeta tesewwufê dil e, rûh e, hest in. Edebîyat jî di van heman qadan de karê xwe dike, ji nav wan dertê, bi wan re diaxive, bi wan geş dibe û bandorê li ser wan dike. Yanî her yek ji wan bandorê li ya din dike û hev û din zengîn dikin. Ev bilfiêl di edebîyata tirkî de pêkhatiye; ew di asta wêjeyî de zehf bilind bûye, lingên wê di gellek qadan de cihgirtî bûne ku ew ji hesta însanî jî kûrtir bûye û wê asoyên xwe û berhemên xwe bi qadên tefekkurê ve jî dirêj kirine, berdane. Li ser vî esasî wêjeya me, bi zarafeta tefekkur û tehessusê asoyên dîtinê di însanî de fereh kirine, dil kûrtir kirine, ziravî bi îdrakê bexş kirine, ew di hunera sipehî de bi zirweyeke mûstesna gihaye.

Di tarîxa me ya edebîyatê de wêjeya me xwe di bin navê "**Edebîyata Tekya'yê**" de xwe şanî daye, nirx û bihayên dînî-tesewwufî di cure mehsûlên sade, rewan, carinan lîrîk, û carinan jî talîmî (dîdaktîk) de bi awayekî himbiz dane xuyakirin. Cureyên wêjeyî yên wekî tewhîdê ku ji yekîtîya Xuda behs dike, mûnacata ku îltîcayên dilşewat ji Wî îfade dike û na'atê ku îşq, mehebbet û hesreta ji Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo xwe bi mijar dike, di teqwîyekirina manewîyata gel de, di tesellî-dîtina dilên westayî û bi derd de, di dûrkirina wan ji guneh, îsyan û ğefletê de, di tesîskirina hezkirina ji civakê, biratî, sulh û aramîyê de wezîfeyeke zehf bi feyde îcra kirine..

Şiêrên Yûnus Emre ku ji wextê dagirkerîya Moğolan destpê kiriye û heta bi zemanê me ku ev heft sedsal in berdewam kiriye û hatiye, bûne yek ji serkehnîya îrşada gel û tesellî-kirina wan. Yanî mûtesewwifên ku ev cure mehsûl dane, di gihandina heyecana dînî ya ji bo girseyên fereh ên gel de di zindî-girtina nirxên manewî de xizmetine giring dane. Hezretên wekî Xoca

Ahmedê Yesevî, Hacî Bayramê Welî, Eşrefoğlû Rûmî û Azîz Mehmûd Hudayî -qeddesellahû esrarehûm- di serên van de tên.

Herçî edebîyeta dîwanê ye, ew ji berhemên wan şairan hatiye meydanê ku zehftir ew bi wezna erûzê nivîsandine û bi uslûba hunermendane ya xwe bal kişandine ser xwe. Digel ku di cureya nesrê de jî berhem dane, lêbelê bi sebeb ğelebeya menzûmê di vê serdema ku bi "edebîyata dîwanê" hatiye zanîn de, tefekkura tesewwufî û kûrahîya wê tesîreke mezin dîtiye. Gellek rumûzên di xezîneyên peyva şiêran de ziravîyên tezewwufî di terzeke ku bi zewqeke bilind re biaxive de hatine tomarkirin û bi awayekî mahîrane hatine îfadekirin.

Ji bilî vê di her cureyeke wêjeyî de tezahura heyecaneke gîyanî ya cuda zal û serwer e. Di tewhîdan de gîyanê bi coş te werdigrin, dibine asoyên fereh ên maneyên nav û sifetan û te bilind dikin digihînin îşqa îlahî ya bêdawî. Bi taybetî ew tewhîdên ku hozanên mûtesewwif nivîsandine, bi feyzeke cipcuda te di fezaya îmanê de difirînin û dilê te bi seyyah dikin ku tu bi hinek feyzan digihî ku tu berê di wan nedigihayî.

Na'‘t ew terennumên şewitî ne, ku evîn û mehebbeta ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- rijandine ser malik û beytan. Ew tabloyên mehebbetê ne, ku resmên wan li ser dilan hatine nexşkirin. Tehessur û îştiyaqa fereha ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di na‘tê Fuzûlî de çi xweş tê îfadekirin:

*Av temenê xwe dibûrîne ji bo bigihîje axa pêyê wî*
*Av bêserûber dikişe û bêemanc serê xwe li vî û wî kevirî dide..*

"*Av, temenê xwe derbas dike û her dikişe ji bo bigihîje wê axa piroza ku lingê mûbarekê wî (pêğemberê rahmê) pê gihaye. Ew di dirêjahîya temenê xwe de bê rawestan serê xwe li vî kevirî û wî kevirî dide û bêserûber û eware bi awayekî meclûb dikişe, diherike.*"

Çendîn hozan û şairên wekî Mewlana, Fuzûlî, Nailî, Nabî, Nehîfî, Şêx Ğalib û yên dîtir jî hene ku xureka berhemên xwe ji neşweya tesewwufî wergirtine û ew di keş û hewaya dil de anîne meydanê.

❁

Ev hemû şanî didin ku kûrahî û naveroka tesewwufî zengînî û gihaneke/kemaleke cipûcuda bi edebîyatê dane qezenckirin. Ev rastîyek e. Di gihan-

dina çêj û zewqa şiêr û edebîyatê ya ji bo girseyên fereh ên gel de ji bo xurek wergirtina wan ji mûhtewayeke wiha jî tesîreke mezin heye. Çawa dîrokzanê edebîyatê Nîhad Samî Banarli jî bi vê peyva xwe;

“tesewwuf e, ya ku edebîyata tirkî anîye meydanê, ew bipêşve biriye û kamil kiriye.” ev heqîqet îfade kiriye.

Di serdemên ku ev rastî di zirwê de bû, heta Nedîm ê ku wek şair û hozanekî dinyewî dihat zanîn jî bi sebeb na‘t nivîsandina xwe navdar bûye. Heta hozanekî wekî Fikret Tewfîq jî di serê pêşî de wî tewhîd nivîsandine û bi saya wan meşhûr bûye. Ev jî şanîdêrîyên manedar ên vê rastîyê ne.

Li alîyê din bikaranîna edebîyatê û bi taybetî jî şiêrê ji bo dana meyla însanî li ser hinek hest û ramaneka diyarkirî, keyfîyeteke ji bo teqdîrê şayan e. Ev hedîsa şerîf jî vê rastîyê îsbat dike:

Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- giringîya ku Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi vê qadê daye, wiha îfade dike, dibêje:

“Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo şair Hessan bin Sabit minbereke xusûsî li mizgeftê da danîn. Hessan derdiket serê, rûdinişt û bi şiêran bersiva mirovên ku Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-zem dikirin, dida. Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di bara wî de got:

*«Heta Hessan berevanîyê ji Pêğemberê Xuda bike, wê Xudê Teala jî bi Rûhu’l-Quddus piştevanîya wî bike.»*”[97]

Li vir bûna Cebraîl -eleyhisselam- digel Hessan -radîyellahû anhû- ku şiêr digotin, maneya wê; ji terefê Xuda ve di rêya Heq de îlham ji şairan re tê bexşkirin û ew ji bo te’yîda îlahî têne bi mezherkirin.

97. Tirmizî, Edeb, 70; Ebûdawud, Edeb, 87.

Ew hunerên ku xerca bingehîna wan bi tesewwufê hatiye stran yanî ewên ku di keş û hewaya riqqeta qelbî, hessasîyet û kûrahîyê de hatine îcrakirin, wekî ku di tarîxa me de hatiye dîtin, ew di avakirina şehristanîya me de bûne amil.

## 4. TESEWWUF Û HUNERÊN CIWAN

Huner, xuyabûna kûrahîya qelbî û hissên wî di tiştan de ye û bi mûşexxes bûna wan e. Di kîjan qadê de dibe bila bibe hemû huner, di bingehê de ji cure tezahureke tefekkur û tehessusê ya di gîyanê însanî de îbaret e. Ziravî û zarafeta di hunerê de rêveçûneke di dehma kûrahîya gîyanî de taqîb dike..

Ew hunerên ku xerca bingehîna wan bi tesewwufê hatiye stran yanî ewên ku di keş û hewaya riqqeta qelbî, hessasîyet û kûrahîyê de hatine îcrakirin, wekî ku di tarîxa me de hatiye dîtin, ew di avakirina medenîyet û şehristanîyan de bûne amil. Bi rastî ew milletên ku di şehristanîyê de bi zirwe bûne, ne sade di qadên wekî sîyaset, ekonomî û leşkerîyê de lêbelê di zanist û hunerê de jî bi mewqîyekî mûmtaz gihane. Dîroka me bi dewlemendîyên vê înkîşafê tije ye. Ji ber ku hêza me û derfeta me nîn e, em temamê motîfên tesewwufî yên ku di gellek qadên hunerên sipehî de tezahur û xuya dibin îfade bikin, emê bi kurtî sade bi behskirina ji hinek pêşketinên ku bi tesîra tesewwufê di hinek qadan de hatine meydanê, îktîfa û bes bikin..

### a. Musîqî

Îslam, dînekî mezin e ku taybetmendîyên di sirişta însanî de red nake; lêbelê wan bi awayekî mûkemmel dirêse, nîzamê dide wan. Çawa gellek hunerên sipehî wisan e, mûsîqî jî yek ji şeklên tezahura xusûsîyetên fitrî yên di însanî de ye. Bi sirişta xwe ew jî wekî xusûsîyetên dîger, ne bi temamî redkirina wê, ne jî wekî ku heye, bi temamî qebûla wê, mûmkin e.

Mûtesewwifan, tesîra mûsîqî ya çavjênegira li ser însanî di çarçoveya edeb û erkanê îslamî de ji bo xizmeta xêrê bikaranîne. Hedefeke bilind ji

mûsîqîyê re dîyar kirine, mûhtewa û wesfekî pê dane qezenckirin ku ew ne ji nefsê re, lêbelê ji gîyanî re bibe xurek. Mûsîqîyên ji vî wesfî re guncaw û mûnasib bin teswîb û teşwîq kirine, ewên ku ji vî wesfî re ne guncaw û mûnasib bin jî red kirine.

Bi rastî mûsîqî dema ji bo xêrê were bi îstîqamet-kirin, geh bi dengên ahengdarên xwe, geh digel wan jî bi arîkarîya menzûmeyên wekî ğezel, qesîde û îlahî'yan coş û xuroşa gîyanî zêde dikin û di encama ulwîyat û telezzuzê de di bilind û mezinkirina gîyanê ferdan de roleke cihêwaz û mûstesna dileyizin.. Ew beste û nağmeyên di halê mûsîqî de ku reğbeta guhdaran ji bo îbadet û taetê zêde dikin, Xuda bi bîra wan tînin, însanî ji gunehan didin bidûr xistin, hestên saf û feyzan ji bo dilan bexş dikin, bi şertê li ber çavan girtina lazimîyên wext û meqamî jî guhdarî-kirina li wan, helbet ne bêfeyde ye.. Bi vê nêrînê, di dirêjahîya sedsalên dirêj de zumreyên mûtesewwif di meyana wasîteyên din de ji vê şağ û çiqila hunerê jî îstîfade kirine û bi vî awayî bûne sersebeb ku bi navê "**mûsîqîya tesewwufî**" şağeke mûsîqayê derkeve holê..

Di vê mijarê de çawa hinek mirov hene, bi temamî li dijî vê ne, ku mûsîqa wek wasîteyeke terbîya manewî were bikaranîn, hinek mirovên din jî hene ku gotine; mûsîqa bi awayekî tixûbdar dikare wek wasîteyeke terbîya manewî were bikaranîn. Ew mirovên ku berevanîyê li dîtin-nêrîna duduyan dikin, dema ew wasîteyên bitêl ên mûsîqayê red dikin, ew wasîteyên ku bi lêdanê dengên ahengdar derdixin jî caiz dêrîyane. Ev cewaz, ji tetbîqata Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- deranîne ku wî di cengan de ji bo hesta qehremanîya leşkeran bîne bicoş û xuroş û cesaretê bide wan, hinek tetbîqatên wiha kirine.

Em xwe ji mûnaqeşeyên di vê mijarê de îctînab dikin, dûr digrin, em bi vê îktîfa û bes dikin ku di çarçoveya endazên şer'î de destûr ji dengên xweş û bi aheng re hatiye dayîn, heta em dibêjin; ev rind û sipehî ye jî. Ji her kesî re malûm e ku mûezzinên deng-xweş dibin wesîle ku cemaet hê bêhtir ji bo hatina mizgeftê reğbet bike. Tercîha Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di bang-danê de jî di vê mijarê de zehf manedar e.. Di wan rojên ku ray û şêwran di bara şeklê bang-kirina ji bo mizgeftê de dewam dikir ka bila ew çi be de, ewên ku bi rêya xewna sadiq mizgînîya vê ji wan re hatî, ewên ku bûne xwedîyê vê şerefê ku ezanê hîn bibin û cara pêşî wê ji ummeta Mûhemmed re bidin zanîn, Ebdûllah bin Zeyd û Hezretê Ûmer -radîyellahû anhûma- bûne. Dema rewş wiha bû jî Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bang ne

bi wan daye xwendin lêbelê wî ezan bi Hezretê Bilal -radîyellahû anhû- daye xwendin. Wî bi vê helwesta xwe di heman demê de ji bo me pîvanek raxistiye ber çavan. Heke mirov bibêje; dewamkirina meûezzinê meşhûrê Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- Hezretê Bilal -radîyelahû anhû- di dirêjahîya jîyana xwe de li ser îfakirina vê wezîfê ji gurbûn û xweşbûna dengê wî tê, ne şaş e.

Mirov nikare bibêje; mûsîqa jî bi sirişta xwe wekî wasîteyên din sade ne ji bo xêrê tenê berhemdar e. Divê em ji vê nuqtê bizav bikin û vê rastîyê jî bibînin ku bi taybetî di zemanê me de hê zehftir ew ji bo livandin û tehrîkkirina arzûyên nefsanî tê bikaranîn, naxwe bi temamî redkirina mûsîqayê ne rast e..

Çawa Xoca Misafir ê ku yek ji mirîdên Behauddîn Neqşîbend -quddîse siruh- ye jî wiha dibêje:

"-Ez di xizmeta Hezretê Xoca Behauddîn de bûm û ez heyranê mûsîqayê bûm. Em rojekê bi çend mirîdan re hatim cem hev, me hinek aletên mûsîqî dîtin, em hizirîn ku di dîwanên Hezretê Xoca de mûsîqîyê îcra bikin. Bi vî awayî em fikrên wî di vê mijarê de hîn bibin û me wiha jî kir. Hezretê Xoca jî ji me re nebû asteng û wî wiha got:

«Em vî karî nakin; lêbelê em wê înkar jî nakin!»

Ev peyva Şahê Neqşîbend -quddîse siruh- îşaretê bi zerûreta wê îhtiyatê dike ku di vê qadê de mûsîqa çêdibe ku ji bo nefsanîyetê jî wergere.. Çawa di roja me de tê dîtin; ji ber ku hinek derdoran nikariye vê hevkêşîyê biparêzin ji cewhera tesewwufê dûr ketine û kar sade ji mûsîqîyê îbaret dibînin baş tê fehmkirin ku di vê mijarê de hessasîyet çi qeder giring e.

### b. Mîmarî/avasazî

Bêşiwar yek ji wan qadên ku zehf zêde têde hunerên sipehî xuya dibin jî mîmarî ye, avasazî ye. Mîmarî, hesab (matematîk) û hendese (geometrî) ji bo zewqeke bilind hatine amadekirin ku ew bi hissên qelbî tê dîyarkirin. Bi îfadeyeke din; dan tecessumkirina îstîdadên zêhnî û gîyanî wek hevbeş di maddeyên wekî kevir û depan de ye.

Ji xwe malûm e ku tesewwufê gelek qîmet û biha bi avasazîyê dane qezenckirin. Mesela dema em bi kûrahîya tesewwufê Mizgefta Suleymanîye û Kullîye'ya wê tehlîl bikin, em dikarin bi awayekî zelal bibînin ku rûhê Îslamê

li wir hatiye xuyakirin, têde bi îhtîşameke çavgîr rûhanîyet hatiye mezc û tevlî-kirin û hinek motîfên tesewwufî têde bi uslûbeke mahîrane hatine sembolîzekirin. Mesela; bi qubbeya merkezî şeklekî wisan mûkemmel bi etrafên wê hatiye dayîn ku ji pêgeha avahîyê û pê de hin bi hin bilind dibe û di dawîyê de bi wî “Wahid”ê mûezzam tê girtin. Nîv qubbeya merkezî û lihevhatinîya wê bi qubbeyên din re jî tezahureke mûhteşema sirra “di wehdetê de kesret, di kesretê de wehdet” ya di tesewwufê de ye.

Bi rastî Suleymanîye, di sipehîtîya mûstesna ya xwe de zincîra mane û zarafetekê ye ku ji gellek teferruatan ve gihiştina bi “Wahid”ê mûezzamê yek, yanî gihiştina Ellahê tek, piştre ji wî Wahidî jî dubare vegerîna li teferrruatê (kesret)ê sembolîze dike.

Ji bilî vê jî qubbeya mezin Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- remz dike. Lewra qubbe, Qur’ana Pîroza ku li mizgefta şerîf tê bi tîlawertkirin, dûayên ku têne kirin û yên wekî van li ser mûmînan dide xuyakirin, Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- temsîl dike, çawa wî jî ew fermanên ku ji Mewlayê xwe werdigirtin ji ummeta xwe re teblîğ dikirin.

Di vê abîdeya bêhempa ya ku têde ğeyretek û titîzîyeke di ser însanî re bi dahîyetê re gihaye hev, sikûnet û esalet têde bi awayekî mûkemmel mezc bûne, heta tu bibêjî bes silûeteke (nexşeke) bi aheng derketiye meydanê. Mizgefta şerîfa ku bi minareyên xwe yên ku bi asîmanî ve bilind dibin, adeta her wekî ku mizgeftê destên xwe bi jorê ve hildane, ji Xuda dûa û nîyazê dike.

Hewaya di hundurê mizgeftê de wê tesîra ku li ser haletê rûhî yê ku li ser însanî îcra dike jî zehf bariz û xuya ye. Gellek însanên ji dînên cuda cuda ku têne serdana vê mabeda abîdeyî jî ji cazîbeya hewaya ku lê rast tên re ram dibin û di nav hizûr û aramîyê de bêhna rûhên xwe berdidin.

Li gorî rîwayetê, ev mabeda mûezzam û hinek mabedên dîger ên ku di alema xewnê de bi fermaneke ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- hatî wergirtin, hatiye te’yîdkirin û bi nîyeta ku ewê heta bi qiyametê li ser lingan bimînin, dest bi avakirina wan hatiye kirin, ji hêla mîmarî û avasazî ve bi qasî îmkanan bi awayekî sağlem û mûhkem hatine avakirin..

Li alîyê din dergeh, tekîye, zawîye, asîtan, îmaretxane ku ev mûesseseyên tesewwufê ne, dîmen û maneyeke ferqdar û cuda li menzaraya bajarên Îslamê zêde kirine. Gellek berhemên hûr û gir ên wekî van bi awayê mekanên wisan hatine avakirin ku bi pirranî hissên fanîtî, sadetî, hîçîtî û tewazûyê xuya dikin,

ew zêde ne, xweş-numa ne û ji bo îcrakirina edeb û erkanê tesewwufî jî kafî û têr, tên.

### c. Hunera/Husna Xetê

Hunera xetê, ev e; mirov bi pîvanên estetîk ve bend bimîne û wisan herfên Qur'ana pîroz bi awayekî sipehîtirîn û bi huner binivîsîne. Husna xetê, hunereke cihêwaz û mûstesna ye ku ji ğeyret û riqqeta sipehî nivîsandina Qur'ana Pîroz ya bi awayekî ji wê re layiq, welidîye, derketiye holê.

Di dirêjahîya dîrokê de rola tekîye û dergehan di pêşvebirina hunera xetê de mûhîm bûye. Hunera xetê, tim û daîm ji derdor û mûhîtên tesewwufî teşwîq û hîmaye dîtiye, ew ji bo gellek seydayên husna xetê bûne hêlîneke perwerdeyê, ew seyda di wan de gihane, perwerde bûne û şagirtên xwe jî di wan de perwerde kirine. Lewra ji bo mirov karibe xetê, wekî nexşeke bi xeml, bi qews û kevanên ku gîyanî miz didin bi darêj û herkeke siriştî û fitrî binivîse; lazim dike ku mirov bûbe xwedî dilekî paqij. Ji bilî vê jî, di hunera xetê de gihiştina kemalê, karekî zor û bi jan e ku sebr û teslîmîyeteke mezin dixwaze. Îhtiyac bi seydayekî kamil heye ku ew bi nimûne were girtin. Ha hunera xetê bi van hemû taybetmendîyên xwe ve, bi tesewwufê re hevpişkîyê erz dike.

Mesela însanekî hov û qehirînokî, heke reşpelekekê çêke, ew reşpeleka ku wî çêkirî wê dirûvê diranên birrekê lê bikevin. Ewê bi awayê goşe tund û xîjkên şikestî were dîtin. Lewra rûh mûzderîb e, ne aram e. Emanca tesewwufê jî îslahkirina nefsan, xilaskirina rûhî ji teselluta nefsê û pê dan qezenckirina ziravî, hessasîyet û aramîyê ye. Ha îhtiyaca alema rûhî ya xettatan jî bi vê aramî, seqamgîrî û hessasîyetê heye. Lewra husna xetê, yan jî hunera xetê sade ne nivîsandina nivîsê ye; lêbelê di heman demê de ew dîsîpîlîneke wisa ye ku rûhan zirav û bi zarîf dike û dilan bi hestên manewî xwedî dike.

Bi rastî teqwîya rûhî, ji bo gihan û perwerdebûna dahîyên mezin tim û daîm zemîn hazir kiriye. Seydayên nimûneyî yên hunera xetê Şêx Hemdûllah, Qarahîsarî, Yesarîzade, Mûstefa Raqim û gellekên dîtir jî ew kesayetî ne, ku bi terbîya derdorên tesewwufî kamil û perwerde bûne.

Ev mîsala ha ya ku kûrahîya rûhîya wan hunermendên ku bi neşweya tesewwufî hatine stran û fedakarîya wan şanî dide, çi îbretdar e:

Wezîfeya nivîsandina xetên qubbeya Mizgefta Suleymanîyê bi xettat Qarahîsarî hatibû dayîn. Qarahîsarî ji bo xetan bi awayekî ji îhtîşama miz-

geftê layiq re temam bike, dest bi xebateke awerte dike. Ew wisan dêhnê xwe dide ser karê xwe ku dema ew ji teshîha dawîna xîjka xwe xilas dibe, ferên / lembeyên çavên wî jî xilas dibin û pencereya rêveçûn û seyra dinyayê jî li ber wî hate girtin.

Dema avakirina mizgeftê temam dibe û wextê ku ew ji bo îbadetê dihat vekirin jî Qanûnî Sultan Suleyman Xan got:

"-Şerefa vekirina mizgefta şerîf ji bo îbadetê, ya seravasazê me Sînan e ku wî ew bi awayekî wiha mûezzam û mûhteşem ava û înşa kiriye."

Mîmar Sînan jî ku pêşî bi hînbûna tewazûyê dest bi hunera xwe kiribû, bêemsalîya xwe ya zahirî bi gihana qelbî jî şanî da, ew dem ew li ser fedakarîya xettat Qarahîsarî fikirî û bi edeb ev bersiva peyvên Sultan da:

"-Xunkarê min! Dema Xettat Qarahîsarî ev mizgefta şerîf bi destxetên xwe dixemiland wî çavên xwe bi feda kirin. Vê şerefê ji wî re bexş bikin!.."

Vêca Qanûnî, di navbera hêstirên çavên mirovên li wir hazir de ferman kir, got; bila Xettat Qarahîsarî mizgefta şerîf veke.

Pêşveçûn û berdewamîya hunera xetê jî digel qaîdeyên wî bi xêra endazên manewî yên ku hatine li ber çavan girtin, çêbûye. Bi vê nêrînê, nivîsandina Qur'ana Pîroz û Hilye'ya Şerîf bi zirwe hatiye qebûlkirin. Wek kevneşopî jî bes ew xettatên ku karîne derkevin zirweya husna xetê, Qur'ana Pîroz û Hilye'ya Şerîf nivîsandine. Bi vî awayî, van berhemên giranbiha, bi cazîbe û surdarîya xwe ya ku rûhan miz didin, adeta bi îşq û şewq ji bo fermana «**bixwîne!**» bûne navgîn û wesîleya îcabet û bersivdanê.

Ev hunera ku bi têgihiştineke wiha tije îxlas û bi bereketa xizmetê, di dirêjahîya sedsalan de wek bêheqdest li talibên wan hatine bi hînkirin. Her xettatê ku maddîyat nexistiye navberê, xizmeta xwe ya talîmê di vê rê de zekata hunera xwe zanîye.

❀

Welhasil; her mûmînê ku ji mûqtezaya vê hedîsa şerîf:

"..*Xuda sipehî ye, ji sipehîtîyê hez dike*.."[98] para xwe werdigre, ne mûmkin e ku ew li hemberî sipehîtîyê hest bi elaqeyê neke.

98. Mûslim, Îman, 147.

Di çarçoveya vê maneyê de bizaveke ğayet tebîî ye ku însan sipehîtîyên derûnî yên xwe -bi şertê ku nekeve ğurûr û kibrê û bi şertê ku bi cewhera dîn re mûtabiq bimîne- di sewîya bihayên estetîk de îfade bike. Li ser vî esasî, di kîjan qadê de dibe bila bibe hemû hunerên ji edeba Îslamî re guncaw û mûnasib bin, ji derdor û mûhîtên tesewwufî tim û daîm teşwîq û hîmaye dîtine. Gellek hunerên sipehî yên ku di kûrahîya dinyaya dilî û tefekkurê de bi tesewwufê ve pev digihin, bi xêra hinek bihayên tesewwufî ye ku ew bi motîfên xwe guhastine, bi zewqa estetîkeke hê bilindtir û bi zengînîya mûhtewayeke hê balatir, gihane.

**Bêyî jîyana dilî û hestên manewî yên wê û hisskirinên wê, sirf bi aqil tenê çûna nav alema heqîqetên bêdawî, ne mûmkin e.**

## 5. TESEWWUF Û FELSEFE

Îlmên fennî, heyber û bûyeran yek bi yek tehlîl dikin û hewl didin taybetmendîyên wan bi qaîdeyên giştî yên wan îfade bikin ku dema ji van re "qanûnên xwezayî" tê gotin, keyfîyeteke pêzan e.. Zanista beşerî û tefekkura beşerî ku hewl dide hukmên giştî yên ku ev îlm tev li holê datînin careke din wan biyek bike, yan jî wan wek qaîdeyên hê giştîtir li holê deyne, ha ev "qada felsefê" teşkîl dike.

Bi vê nêrînê felsefe ku wek îlmê îlman tê qebûlkirin, tekane wesîteya ku bi meqsûda gihiştina heqîqetê, serî lê dide, "aqil" e. Di her ekola felsefî de aqil, heke çi qeder wekî ku di "rasyonalîzm"ê de ku ew şağeke felsefê ye -adeta- wê ji bo mewqîyê îlah bilind neke jî dîsa di lêgerîna fîlozofan ya ji bo heqîqetê de aqil wek tekane wasîteya ku pişta xwe dispêrînê hatiye qebûlkirin..

Îslam, aqilî yek ji şertên esğerî û biçûçiktirînê mûkellefîyetê dijimêre. Digel vê jî, ji ber ku Îslam di mijara gihiştina heqîqetê de bêkîfayetîya aqil qebûl dike "bi nezara felsefeya ku aqilî tê jimartin di heman demê de "neql"ê jî esas digre. "Tesewwuf" jî ku di îslamê de maneya wê têgihiştineke bilind û lêgerîneke mûkemmelîyetê ye, digel ku li dûv hinek rastîyên metafîzîkî bazdide jî failîyeta ramanî ya ku heta bi tixûbê "keşf"ê pişta xwe didiyê, wek pêbenda nessê wê tehqîq dike. Yanî ramanên bingehîn ên tesewwufî pêbendbûna her yekî ji wan bi mesnedeke şer'î, qebûlkirina neqlîbûna vê failîyetê jî lazim dike. Aqil, digel ji bo waqifbûna ji hikmeta nessê bikartîne jî dîsa failîyeta serbixwe ya wî jî di tesbîtkirina ehkamê Îslamî de caiz nayê dîtin. Ji ber vê ye ku ji bo di Îslamê de aqil feydeyeke kamil temîn bike, lazim e ku ew bi wehyê were terbîyekirin û selahîyeta wî jî bi vî awayî were tixûbdarkirin. Bi vî awayî ew rêya ku têde rêveçûn çêdibe di tixûbê keşfê de xilas dibe û wek

pêbenda bi failîyetên qelbî caiz dîtina rastîyên ku hatine pê gihan û ecibandina wan jî qebûla umûmê pêwîst nake. Ji bo îfadekirina vê rastîyê hatiye gotin:

"Keşfa ehlê keşfê, bes ji bo wê bi xwe delîl e; ne ji bo dîgeran."

Digel vê jî di nuqteya ku selahîyet û taqeta aqil têde xilas dibe, li gorî mirov nikare îddîa bike ku heqîqet jî wê bi dawîyê bigihe, ji vê nuqtê û pê de temayula ku ber bi bêdawîyê ve teselsul dike, diçe û digihe rastîyan, nayê berterefkirin. Lewra ev fitrî ye. Ji ber vê gerek di tefekkurên dînî de, gerek jî di tefekkurên ğeyrê dînî de ji van beşên rastîyan re bi laqeyd nehatiye kirin. Ji terefê her kesî ve malûm e ku ramanên felsefî yên aîdê meseleyên metafîzîkî (ji fîzîkê biwêdetir) kullîyateke mûezzam teşkîl kirine. Lêbelê ji ber ku fîlozof aqil tenê bikartînin ji tenaqudan/nakokîyan xilas nebûne û her fîlozofê ku derketiye holê jî bi red û tenkîdkirina fîlozofên berî xwe dest bi kar kiriye. Heke di vê de rola di plana pêşî de girtina hestên xwedbînî û îddîayên nefsanî hebin jî esil sebeb, taybetmendîya salim nebûna aqil ya ji tenaqudan/nakokîyan e.

❁

Bi rastî aqil, wekî kêreke du-dev e. Ew, terorê jî bi însanî dide kirin, amelên salih jî pê dide kirin. Bê arîkarîya aqil, çûna "ehsenê teqwîmê (gihiştina sewîya bilindtirîna ku bende pê bigihe ye) ne mûmkin e. Lêbelê dîsa aqil bi xwe ye, ewê ku di pirranîya caran de însanî dibe ser "**bel hum edell**", yanî ew aqil e ku însanî ji hêla îdrakê ve dibe digihîne sewîyekeke ji ya heywanan jî nizmtir û berjêrtir.. Naxwe îcab dike aqil di bin dîsîpîlînekê de were girtin. Ew dîsîpîlîn jî terbîya wehyê ye. Heke aqil di kontrola wehyê de be, wê însanî bibe bigihîne selametîyê. Lêbelê heke ew derkeve derveyî wehyê ewê însanî bibe felaketê. Ji lewma lazim e aqil di hêla rizaya îlahî de were bi îstîqametkirin.

Di dirêjahîya tarîxê de gellek zalim ku di zirweya aqil de bûn jî ji ber kirinên xwe hest bi ezebekî wijdanî yê biçûçiktirîn jî nekirine. Lewra zulimên ku kirine li gorî wan bi xwe ew bizavên zehf aqilane bûne. Hûlagû jî ketibû nav Beğdadê, di avên Dîcle'yê de 400 hezar însanên mesûm xeliqandibûn, wî hîç hest bi ezabê wijdanî nekiribû. Yan jî di berî Îslamê de di serdema Mekkê de heke efendîyekî serê kole xwe jî jêkira, wijdana wî pê nediêşîya, hest bi poşmanîyeke biçûçiktirîn jî nedikir. Jêkirina koleyekî, yan jî êzingekî di nêrîna wan de aynî bûye. Heta wan ev ji bo xwe mafekî xwezayî û rewa didît.

Ha di van însanan de jî aqil hebû, feqet ji ber ku ew ne di bin terbîya wehyê de bû, însan îdlal dikir, ew diajot ser kirina cînayetên bêjimar û ev jî normal û asayî şanî dida. Aqilekî wiha, wijdan kuh kirine; li pêşîya hestên şefqet, merhemet û wijdanê bûye perde.

Ji ber erbabê felsefê hewl didin her tiştî bi aqil îzah bikin, ne karîne xwe bînin ser rêya rast, ne jî karîne civakên xwe îrşad bikin û rêya rast û durust ji wan re şanî bidin. Ji xwe heke şîyana aqil hebûye ku her karî bibîne, bike; hingê îhtiyac bi rêberên hîdayetê pêğemberan çênedibû. Bi vê nêrînê, îhtiyaca aqil bi rêberîya wehyê heye.

Hinek fîlozofên ku ferq xistine vê rastîyê, ev bêçaretîya aqilî îtîraf kirine, di mijara lêgerîna heqîqetê de li wasîteyên din gerîyane. Yek ji fîlozofên wiha fîlozofê Fransî Henry Bergson e (z.1859, m. 1941) wî “heds”a ku jê re “Entuisyon” tê gotin, yanî hiss jî wek yek ji wasîteyên gihiştina heqîqetê qebûl kiriye. Ev kelîme, ku mirovên berê jê re “sinûhatên qelbîyye” digotin, navê failîyeta dilî ya ehlê mûkaşefê ye.

Bergson dibêje; bi îddîaya ku ew bi tecrûbeya laboratuwarê nayên kontrolkirin, redkirin û îtîrazkirina li heqîqetên metafîzîkî yên ku diniqutin dilên dîndaran ku ew bi wasîteya hinek temrînên rûhî (her wekî zikrê di tesewwufê de) werdigrin, tabîî dema ew di piştî paqijkirina dilê xwe de digihine mertebeyeke manewî ya diyarkirî, ne maqûl û ne di cihê xwe de ye.. Lewra ev rastî wekî rastîyên metafîzîkî bi tecrûbeyên laboratuwarê nayêne kontrolkirin. Wî dîyar kiriye ku hemû heqîqetên mûcerred ji tecrûbeya labiratuwarê re nabin mijar, çawa ku rewş di tecrûbeyên tesewwufî de jî wisa ye. Ev jî şanî dide ku beşeke hindik ji felsefê mahîyeteke ji dîn û bi netîca xwe jî ji tesewwufê nêzîk û aşnabûnê erz dike. Bi pirranîya sereke û rasera fîlozofan, ji bo gihiştina heqîqetê ji aqil pê ve ti wasîteyeke din qebûl nakin û wextê xwe bi rexnegirtina li hev, derbas kirine. Li hemberî vê jî pêğember û ewlîyayên ku warisên wan e, ji ber ku tim ji heman serkehnîyê yanî bi rêya wehy û îlhamê bifeyz dibin, hev û din te’yîd kirine.

Mûtefekkirê mezinê Îslamê Îmam Ğezalî -rahmetûllahî eleyh- wiha dibêje:

“Di mijara fehmkirin û îdraka felsefê de piştî ez ji îlmê felsefê, tehsîla wî, fehmkirina wî û lawazîya zeîfîyên wî vala bûm, min fehm kir ku ev îlm jî ji bo kemala meqsûdê ne kafî ye. Aqil bi tena serê xwe tenê nikare temamê xwestekan fehm bike û ew neşê perdê ji ser hemû asêpirsan rake.”

Halê Hezretê Ğezalî di navbera qadên aqil û marîfetê de di berhemeke Necîb Fazil Qisakurek de wiha tê vegotin:

“Ev zilamê mezinê tefekkurê ku bi «huccetê Îslamê» tê bibîranîn.. Wî; îlmê xwe, fikrê xwe, hemû karên serî û îdrakê li alîyekî hiştine, dema wî berê xwe da ser îstîqameta marîfetê jî wiha got:

«Min dît ku her tişt ji xwe avêtina ber penaha feyza pêğemberê pêğemberan îbaret e û ya mayî sade derew û xap, wehm û xeyal e!.. Aqil jî hîçek e.. Sade tixûb e!»

Ev serê çelengê ku cîhanê hemteyeke wî nedîtiye, hemû pirsnîşan û îstifhamên xwe dewam kir, xwe avêt ber penaha feyza rûhê pêğemberê pêğemberan, bêtixûbî dît.”[99]

Bi rastî mirov dikare bi aqilekî sînordar heta bi nuqteyeke diyarkirî biçe. Lêbelê ma heqîqet hemû, ji mûhtewaya van tixûban îbaret e, birîtî ye? Ma ji wan biwêdetir hîç jî heqîqet nîn e? Ha bersiva tetmînkara ji bo van pirsan û sûalên wekî van, mûmkin e mirov wê di dinyaya dilî ya tesewwufê de bibîne ku ew jî wekî felsefê tefekkureke di ser maddê re ye; lêbelê ji ber ku ew xureka xwe ji serkehnîya wehyê digre, ew bi temamî ji felsefê cuda dibe..

Ellah Teala însan aferandiye û ew ji her kesî baştir jî bi taybetmendîyên wî dizane. Bi vê sebebê aqil, di rêya heqîqetê de bi awayekî mûtleq pêdivîya wî bi rêveçûna di ronahîya teblîğa îlahî de heye. Ji nuqteya dawîya ku aqil karibe pê bigihe, biwêdetir jî zerûrî ye ku vêca qelb û rêya keşfê bikeve dewrê. Bêyî jîyana dilî û hestên manewî yên wê û hisskirinên wê, sirf bi aqil tenê çûna nav alema heqîqetên bêdawî, ne mûmkin e.

99. Ji Welîler Ordûsûndan, rûp. 213.

*Zanîn; ne temaşekirin e, çareserkirina hikmet û sirrê ye.*

## G. ÎLMÊ NAFÎ (Zanistên Bifeyde)

Bi şexsîbûna zanînê, kok berdana wê di kûrahîyên îdraka selîm de, jê re "**îrfan**" tê gotin. "**Arif**" jî ji sirr, hikmet û tecellîyên îlahî yên di derûna zanînên xwe de waqif bûye, yanî ew xwediyê îrfanê ye. Di bara ehlê îlmê yên ku bi vê kemalê negihane de jî tê gotin: "Alim e, lê ne arif e." Zanînên mirovên wiha aynî wekî zanînên di kitêban de sabit û mehfûz in. Ev rewş, dişibihe tuxmên di embarê de. Ew tuxm, dema bigihîje axê derfeta neşwe û nemayê bidest dixe, înkîşaf dibe û zêde dibe. Di rewşeke berevajî de agahîyên wiha di vê de bisernakevin ku ramanê îmal bikin, ji zêhn peya bibin, xwe berdin dil û hestan kûr bikin. Ji ber vê, ji zanînên wiha re "**zanînên kîtabî**" tê gotin.

Heke di cihê xwe de û rast were bikaranîn mûheqqeq e ku her îlm dê feydekekê temîn bike. Lêbelê ji bo seadet û selametîya însanî ya herdu cîhanan, tehsîla zahirîya van îlman tenê kafî nayê. Ji bo telafîya vê nuqsanîyê Îslamê bi ğaye û emanca temînkirina rast û di karên bi xêr de bikaranîna îlman û û astengkirina bi aletbûna wan ya ji bo xirabîyê jî bi "**îlmê naf'î**" jîyana dilî xemilandiye.

Çawa merhûm Xocê Mezin Mahir 'Îz jî daye zanîn ku îlmekî ji kûrahîya qelbî mehrûm be nuqsan e û tekane çareserî ji bo berterefkirina vê nuqsanîyê jî dîtina îrşada manewî ye. Xocê Mezin Mahir Îz wiha dibêje:

"Ji ber ku tim û daîm di nuqtekekê de komkirina qîl û qalên îlmê ne mûmkin e, digel hîç ti zemanî bi şûn de nemana ji tedqîqa îlmî jî; lê ez bawer dikim ku esil waqifbûna ji bo heqîqetê bes wê bi xêra ehlê îrşadê mûmkin bibe. Ha ji ber vê sebebê ye ku bi îşareteke li derveyî yeqaze (şîyarîya min), min pêpelinga îradeya xwe ji bo asîmanê marîfetê bi mîrac kir û ew bi feyza Samî ve girêda."[100]

100. Yillarin Îzî, (Şûnpêya Salan) rûp. 396.

Bi rastî gihana dilî ya ku di encama terbîya manewî de tê qezenckirin, îdraka însanî digihîne asoyeke di ser îlmên zahirî re ku ji vê re “**marîfet**” tê gotin. Ev jî dikare bes bi xêra hinek temrînên tesewwufî were bidestxistin. Dema însan bigihe asoya vê dîtinê, çi qeder alimekî mezin be jî dîsa ewê ecz û nekarîna xwe îdrak bike û ewê ji nexweşîya serxweveçûn û meğrûrbûna bi îlmê xwe, rizgar bibe. Tefekkura wî ya ku bi ber pêşangeh û meşhera heqîqetên bêdawî û tevlîhev ve tê vekirin jî bi hestên heyret û nekarînê tije dibin. Dema ew bi aqilê selîm jî bihizire, ewê fehm bike ku zanîn, sade ne temaşekirina li zahirî ye, lêbelê; çareserkirina sirr û hikmetê ye. Zanîn, çareserkirina mûammaya nîzama mezina di heqîqetê de ye û karîn agahdarbûna ji sirrên îlahî ye.

Hezretê Mewlana, giringîya bidestxistina îlmê marîfetûllah a ku ji bo seadeta ebedîya însanî pêwîst e û serencama ğemnaka mirovên ku ji wê bêgane dimînin jî di vê çîroka li jêrê de çi xweş radixe ber çavan, dibêje:

Alimekî nehwê (zanista rêzimana Erebî) li gemîyê siwar bûbû. Di esnaya seferê de bi awayekî bi îlmê xwe meğrûrane bi gemîvanî re kete sohbetê. Wî dem bi dem pirsên cuda cuda ji gemîvanî kirin û dema wî ji berpeyvê xwe bersiva «nizanim» wergirt jî li hemberî wî wek îftîxarkirin bi îlmê xwe jê re got:

“-Ğebînetê! Te bi sebeb nezanîna xwe nîvê temenê xwe pûç bûrandiye û te zîyan kiriye.” Bi vî awayî tinazê xwe lê kirin.

Heke çi qeder dilê gemîvanê qelb-temîz bi vê bizava biçûkxer û heqaretwarî şikestibe jî, lêbelê wî aqil-kamilîya xwe şanî da, bersiva nehw-zanî neda, huş bû. Dema wan ew sohbet dikir, bahozeke dijwar rabû û gemî bi ber girdab û gereke dehşetdar ve kişkişand. Gemîvanî di wê hengama ku telaşeke mezin ji ser rûyê her kesî ve xuya dibû de, li nehw-zanî vegerîya û jê pirs kir, jê re got:

“-Seyda, ma tu avjenîyê dizanî?”

Nehwzan, di wezîyeteke sippî şirihayî û mad-zerbûyî de bi dengekî lerzokî kire kuh kuh û got:

“-Ne xêr, ez nizanim!..”

Vêca gemîvanî bi dengekî ğemgîn jê re got:

"- Ji ber ku min nehw nizanîbû nîvê temenê min mehû bûbû, naxwe vêga temenê te tev mehû bû. Lewra îmkan nîn e ku gemîya me ji vê girdab û gerê rizgar bibe. Hey nehwzan! Ma te nizanîbû ku di vê deryayê de îlmê avjenîyê ji îlmê nehwê bifeydetir û zerûrîtir e?.."

Meqsûd ji îlmê nehwê yê di vê çîrokê de, sade îlmên zahirî û dinyayî ne. Esil îlmê bi feyde jî, ew îlm e ku bersiva îhtiyacê bide. Mezintirîn îhtiyaca însanî jî digel bedenê temînkirina seadeta ebedîya rûh e. Ev jî bi qezenckirina rizamendîya Xuda ve bend e. Rizamendîya Xuda jî dikare digel îmana kamil bi amelên salih were bidestxistin.

Dîsa wekî ku ji vê çîrokê tê fehmkirin; ev gemîya bedena mirok dema di girdaba mirinê de diferfitî, yanî dema civana ecelî were û wextê xatirxwestina mezina ji dinyayê nêzîk bibe; ew zanîn û malûmatên bêrûh, ziwa û sirf ji bo rehetîya nefsê diaxivin ku nikarin bersiva îhtiyacên esilî bidin, nayên jîyîn û nabin îrfan, ewê ti feydê nedin xwediyên xwe..

Naxwe îcab dike ku berî ecel were divê mirov zanîn û malûmatên xwe bi wesfekî wergerîne ku ew ji bo qezenckirina rizamendîya Xuda bibin medar û wesîle. Lewra dema gemîya bedenê li mirinê bikeve, hêvî ji wan zanist û îlman nayê kirin ku ew sirf ji bo rehetîya wê bedenê tenê bikêr tên ku ewê ji axê re were hiştin. Ew dem îhtiyac bi "qelbê selîm" heye. Divê qelb jî berî ecel were di encama berterefkirina astenga nefsê de, vê wesfê qezenc bike. Ew mirovên ku nikaribin bigihin vê qunağ û merhelê, ewê ji helakbûna di vê deryaya fereha ku ketinê, hîç rizgar nebin. Lêbelê ewê ku karibe nefsa xwe her wekî ku ew miribe wisan wê ji ğurûr, kibr û hewasan rizgar bike, ev alema nû'ya ku wekî deryayê ye, ewê serî li ser xwe hildigre, nahêle ew bikeve nav behrê, ew wî ji helakbûnê rizgar dike. Ew guhê xwe dide şîreta ku ev hevoka ha ji bo îzahkirina wê keyfîyetê hatiye gotin:

مُوتُوا قَبْلَ اَنْ تَمُوتُوا

"*Berî mirina we were, bimirin!*" divê ew hewl bidin dilê xwe bidin vê nesîhetê, temayulên nefsanî yên xwe di dinyaya hundurîna xwe de ji bo sewîya hindiktirîn daxin xwarê. Di bara lazim hatina ku ji bo berterefkirina arzûyên nefsanî jî divê mirov bi xwe dem bi dem xwe di bin mûraqebê de bigre de, divê mirov vê îqaz û şîyarîya Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû-:

حَاسِبُوا اَنْفُسَكُمْ قَبْلَ اَنْ تُحَاسَبُوا

"*Berî di mehkema îlahî de hesab ji we were pirsîn, hûn hesabê ji nefsa xwe bipirsin!*"[101] ji bîra xwe hîç dûr negire.

❁

Li gorî rîwayetê alimek wiha vedibêje:

Min Îmam Ğezalî di nav cemaetekê de dît ku bi eşkerehî nûr û xêr ji rûyên wan dixuya. Cileke pînekirî li ser wî hebû û di dest wî de jî misînek hebû. Min jê re got:

"-Ey Îmam! Ma ser-dersdarîya Medreseya Nîzamîye'ya li Beğdadê ji vê ne baştir bû?"

Wî kûr kûr li min meyzand û ji min re got:

"-Dema heyva çardeh-şevîya bextiyarîyê li asîmanê îradê welidî, ji ber ku taveroja aqilî rêya wusletê şanî da, min wiha kir."[102]

Bi vê sebebê bi bandortirîn îlmê ku însanî li dinya û axretê bigihîne seadet û selametîyê, bi awayê sipehîtirîn bi dilê xwe naskirina Xuda ye û bi berpirsîyeke ku aqilî, wijdanî û qelbî ya ku ji vê zanînê diwelide jî di asteke mûkemmeltirîn de kirina amelên salih e. Lewra heke ev hiss, kûrahî û têgihiştin nebe, hemû îlmên ku ji hasilkirina feydê re bikêr tên dê encamên bizirar ên maddî û manewî yên gellekan ji van îlman neyêne berterefkirin.. Ji lewma îlmê naf'î (zanîna bihavil) di esilê xwe de meseleya aso û zêhnîyetekê ye. Berî ew çêbibe, îmkanên îstîfadekirina ji îlman, dê ji quwwê ji bo fiêlê dernakeve, yan jî ewê ji zanînê ji bo amelkirinê wernagere. Bi berevajî vê feyda wan, ewê ji bo xirabîyê bibin alet ku tekane çare ji bo rizgarbûna ji vê rewşê jî qezenckirina gihana dilî û xesleta ye ku em jê re îlmê naf'î dibêjin.

Çawa kesekî ji gihana îlmê naf'î (zanîna bi feyde) mehrûm, fereza celladekî ku piştî tehsîla hiqûqê dibîne, di şûna ku ew heq û edaletê tewzî û belav bike de; kesekî ku tehsîla tibê (doktorîyê) kiribe jî di şûna ku şîfayê belav bike de çêdibe ku ew bibe qesabekî mirovan jî.. Digel qabilîyeta zanistîya xwe jî rêvebirekî ku ji merhemet û mehebbetê mehrûm be jî ewê sade jehrê

101. Tirmizî, Qiyamet, 25.
102. Mûhemmed bin Ebdûllah el-Xanî, Adab, rûp. 9.

bi ser mirovên di bin desthilatî û fermana xwe de birijîne. Ew kesên wiha bin, dikarin zirareke ji wê zirara ku mirovekî cahil nikaribe bi cehaleta xwe bide hê xirabtir ewê bi hêsanî di saya îlmê xwe de bidin.

**Hezretê Yûnus Emre** çi xweş dibêje:

*Ji xwendina îlmê mirad,*
*Mirov Heqqî nas bike,*
*Lewra ku tu bixwînî û nizanibî,*
*Ha ew nanekî ziwa û tisî ye!..*

Li ser vî esasî her însan, ji bo karibe di karûbarên dinya û axretê de serfiraz bibe û karibe di hêla maddî û manewî de bipêşkeve, dema ew bi îlmên cuda cuda re meşğûl dibe, berî her tiştî îhtiyaca wî bi ronahîya îlmê naf‘î (îlmê bi havil) û kûrahîya dilî heye..

Bi rastî îlmekî ku însanî bajoyê ser ğurur û kibrê, di dawîyê de jî wî di ger û girdaba helakê de bixeniqîne, çendan ew bi zahirê xwe ji tiştên sipehî û bihavil îbaret û birîtî bibe jî, lêbelê di heqîqetê de ma ew ji webalê pê ve tiştekî dî ye?! Ji lewma pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- tim û daîm di vê îstîqametê de îlm ji Cenabê Heq teleb kiriye û wiha nîyaz kiriye, gotiye:

“*Ya Rebbî! Ez îlmê naf‘î (zanîna bihavil) ji Te dixwazim! Ez ji îlmê bêfeyde xwe diavêjim ber penaha te!..*”[103]

Di çarçoveya vê maneyê de îlmê naf‘î (zanîna bifeyde) dikare cewhera îlmê tesewwufê jî were jimartin ku ew hewldana xemilandina bendeyî ya bi zuhd, teqwa û îhsanê ye. Îlmê mirovên wiha, maneya wê êdî ew bi qiwama marîfetê gihane.

**Hezretê Mewlana** dibêje:

“*Ewên ku sirf alimên zahirî bin, li gorî qadên xwe hûrahîyên geometrî, astronomî, hekîmtî û felsefê dizanin. Ew dizanin, lêbelê ev hemû zanînên di bara dinyaya fanî de ne, ku bi qasî mirov çavê xwe miç bike û veke tê û dibûre. Ev ji însanî re rêya derketina ser asîmanê li qata heftan, yanî rêya çûna mîracê şanî nadin.*”

103. Mûslim, Zikr, 73.

"*Ew ğafîlên ji nefsên xwe re mehkûm, agahîya rêya Xuda û qunağên gihiştina wê rê nizanin! Lêbelê arifên ehlê dilan, agahîyên rêya Xuda, ne bi aqilên xwe, lêbelê bi dilên xwe, dizanin!.*"

Ew kesên ku ji îlmê naf'î (zanîna bi feyde) yanî ji gihana dilî ya di îlmê de mehrûm bin, di encamê de ew çi hîn dibin, bila hîn bibin, her ewê ji wusleta Heq ku mezintirîn heqîqet e, mehrûm bimînin. Îlm, heke ew ji guh û zêhn ji bo dil peya bibe û ew bi qelb jî were hezmkirin, hingê ewê ji bo xwediyê xwe tecellîyên sipehî hasil bike. Lêbelê îlmekî wiha, ji sûretî bi sîretê, yanî bi exlaqê xweş, amelê salih û tirsa ji Xuda, werdigere.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha gotiye:

"(Resûlê min!) **Bibêje: Ya Rebbê min, îlmê min zêde bike!**.."[104]

Ev zêdehî, sewîye qezenckirina hestên bendeyî yên teqwa û xeşîyetê ne. Lewra dîsa Cenabê Heq di ayeta pîroz de gotiye:

اِنَّمَا يَخْشَى اللّٰهَ مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمٰٓؤُا

"**Di nav bendeyên wî de bas alim** (bi awayê pêwîst) **ji Xuda ditirsin**.."[105]

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî gotiye:

"*Di navbera we de ewê ku ji we tevan zehftir xwe ji Xuda diparêze (mûtteqîtirînê we) û ewê ku ji we tevan zehftir Wî dizane jî her Ez im.*"[106]

Yezîd bin Seleme el-Cû'fî -radîyellahû anhû- vedibêje:

"*-Min got: Ya Pêğemberê Xuda, min gellek hedîsên şerîf ji te bihîstin. Lêbelê ez ditirsim hedîsên ku min berê bihîstine piştre wan jibîr bikim. Peyveke komkar (ku cihê tevan bigre) ji min re bibêje!*"

Ji min re got: «*-Di bara yên ku tu dizanî de li hemberê Xuda bibe mûtteqî* (û bi wan amel bike ew ji te re bes in.).»"[107]

104. Taha, 20/114.
105. Fatir, 35/28.
106. Buxarî, Îman, 13; Edeb, 72.
107. Tirmizî, Îlm, 19/2683.

Naxwe heke îlm, nigihabe dil û xwediyê xwe nebiribe negihandibe ser hezkirin û tirsa ji Xuda, çendan bi zahirî ji xwediyê wî îlmî re alim were gotin jî, ew di heqîqetê de alim nayê jimartin.

Îmam Ğezalî -quddîse sirruh- ji bo wan kesên ku bi îlmên dinyayî tenê re meşğûl dibin û temenê xwe bi "qîl û qalên" van re dibûrînin û Rebbê xwe jibîr dikin wiha diaxive, dibêje:

"-Hey Kur! Heke te îlmên wekî kelam, mentiq, belağet, şiêr, sarf û nehwê bi îrfanê wernegerandibin xwelî li te be! Ew temenê ku Ellah -celle celalûhû-daye te ji bo tu îbadetê jê re bikî, ma ji pûç bûrandina wî pê ve çi ketiye destê te?!"

Bi rastî ew îlmê ku bendeyî li cem Xuda li xusranê bixe û feydeya wî ji bo çûna cennetê û gihiştina cemalûllahî çênabe, wê bikêrî çi were? Ew îlmê ku însanî di dawîyê de bi Îblîs, Bel'am bin Baûra û Qarûn bişibihîne û wan bi sifetên xirab ên wekî ğurûr, kibr, xwe ecibandin, ji jorê ve meyzandina li her kesî û di nîhayetê de îsyana li hemberî Xuda, tije bike, çêdibe ku jê re îlm were gotin?. Esla jê re îlm nayê gotin! Bi vê nêrînê, mezinên Îslamê di bara îlmê de gotine:

"*Îlm, îdrak-kirin e. Heta îlm bicih neyê, îlm bicih nayê. Dawîya vê îdrakê jî marîfetûllah e. Marîfetûllah bi vê hêla xwe, cewhera hemû îlma ye. Îlm, bi qasî nêzîkbûna xwe ya ji van îlman, biha qezenc dikin..*"

**Hezretê Mewlana** dibêje:

"*Mirovê bihuner û zana baş e, lêbelê ji Îblîs îbret bigre û zehf qîmet nede wî! Lewra îlmê Îblîs jî hebû. Feqet wî, aferîna Ademî ya ji axê û rûyê derveyî yê wî dît û heqîqeta wî nedît.*"

"*Gellek îlm, aqil û têgihiştin hene ku li hemberî rêwîyê heqîqetê dibin gul-yabanî, li rêya wî dixin. Ji lewma pirranîya mirovên li cennetê, kesên saf û ehlê qelb in, ku karîne xwe ji xirabîya fîlozofan biparêzin. Hey ğafil! Ji ğurûrê, ji xwe ecibandinê rizgar bibe, tiştên nelazim ji ser xwe bavêje da ku di her gavê de rahmên îlahî li ser te bibarin.*"

Hîç ti însan nikare bi aqilê xwe tenê bigihîje heqîqetê. Lewra kaînat, dema bi aqil were tehlîl û analîzkirin însan bi mûammayên bêjimar re hevrû dibe. Aqil di pêkanîna karûbarên dinyayî de bihavil û bifeyde ye; lêbelê heke ew feyza xwe ji wehya îlahî wernegire, hingê ew di rêya heqîqetê de têrê nake.

Gihiştina heqîqetê, bi îlawe li ser aqil, karê îman û îşqê ye. Mûhakemeyeke selîma ku bi wehyê hatibe terbîyekirin, dikare di lêgerîna heqîqetê de bendeyî bigihîne nuqteyekê. Lêbelê di îdrakkirina sirr û hikmetên ji wê biwêdetir de jî însan, dikare bes bi baskên dilî mesafe bigre.

Rola aqil di vebûna li ber alema heqîqet û sirran de, wekî derîyekî teng e. Digel vê jî heta ku aqil nebe, çawa gihiştina îrfanê ne mûmkin be, hîç ti bêaqilek jî nabe “arif”. Lêbelê aqil tenê jî xwediyê xwe nagihîne îrfanê. Bi mayîna di setha aqilî de, bi maneya kamil îdrakkirina dîn ne mûmkin e. Lewra aqil, pêpelingek e. Divê mirov karibe ji wir bipeke here evînê. Hezretê Mewlana ji bo mirov karibe wan merhele û qunağan qut bike, gotiye:

“*Li pêşîya Mûstefa’yî aqilî bike qurban*.”

Di rêya ku diçe cem Heq de di piştî dawîya aqil de îhtiyac bi wecda dil heye.

Temamê ehlûllah, dibêjin; em bi îşqê di vê deryaya hebûnê de derbas bûne. Çawa em ji wan zehf zêde nağmeyên îşqê ku ji wecda wusleta heqîqetê dipijiqin, dibihîzin. Di nezara wan de qîmetê vê dinyaya wêran tine bûye. Neşweya îşqê di halê îstiğraqê de dor li wan girtiye. Bi vê sebebê, ew tim û daîm berê xwe didin ser ğaye’ya esilî. Herçî Bendeyên Xuda welî ne, şexsîyetên zirweyî yên dinyaya rûhî ne, ku wezîfeya pêşî nefsa xwe terbîyekirina wan pêğemberan ku her yek ji wan abîdeyeke exlaqî ye, di nav însanîyetê de pêşî ew di nefsên xwe bi xwe de jîyane û piştre jî bi awayê ku ji bo mirovên li pey xwe jî mîsalê teşkîl bikin, ew peywir û wezîfe temam kirine..

Ew mûmînê ku çavê dilê wî hatibe vekirin, li her cih û deverê tecellîyên îlahî yên Rebbê xwe mûşahede dike. Ev hal, ne keramet e, îlmek e ku ew bi îrfanê wergerîyaye. Ew ber û mehsûla evîna heqîqî ya di dil de ye. Dostên Heq, bi vê dîrayeta dîtinê ku îşqa îlahî ji wan re bexş dike, di nav tecellîyên qudreta îlahî de li alemê temaşe dikin. Ew însanî, tiştan û kaînatê bi sirr û heqîqetên wan, dibînin.

Bi rastî heke zanîn, bi wesîleya ğurûrê di qelb de asê bûbe û ew bibe strî, ma însan dikare ji wê gula ku emanca wê ye, bêhnê bike?! Ma ji bo wan mirovên ku ji zimanên bayan, ji zimanê çem û rûbaran û ji zimanên çîyanan fehm nakin; ji bo wan mirovên ku ji gulan, ji daran, ji kurman û ji çûkan îbret

nagirin wê çi çêj û t‘ama jîyanê hebe?! Hiss nekirina hunera îlahî ya ku ew telqîn dikin, didin hînkirin, ji bo negihana qelbî elamet e..

Sadî-yê Şîrazî berê dilan dide ser hikmetê û wan wiha ji bo îlmê naf‘î (zanîna bi feyde) bang dike, dibêje:

“*Di nezara têgihiştîyan de pelên şîn ên daran jî dîwanek e. Ma her zerre, hunera îlahî ya Cenabê Heq îfşa nake?*”

Kaînat, ji bo tecellîyên ku ji serkehnîya neşweya îlahî de biserve diçin, pêşangehek e. Mûammaya mechûla ku jê re însan tê gotin jî, tecellîyeke kamila neşweya îlahî ye. Bi xwedî dilekî bûna wî ye, ya Kurê Însanî, li dinyayê digihîne kemalê û neşweyên bilind hildigre. Dema kevir-baran li Hellac dihat kirin jî ew li dilekî kamil gerîya. Ji ber wî yê ku gul diavêt, dilê wî êşîya û ew wisan çû.

Lewra li kaînatê her zerre, her an û demê nûçeyeke taze û silavekê ji neşweya îlahî ji bo me dide. Ji kenê zarokê di hemêzê de bigre heta bi lihevketin û ferfitîna perên pirpirîkê, ji feryad û fîğanên bilbilan bigre heta bi cimbişa rengareng û bêhnên biharê ma her tişt ne tecellîyeke hezar û yek a neşweya îlahî ye? Ha bi îhtîşamtirîn tezahura îlmê naf‘î (zanîna bi feyde), bi çavê dil xwendina kitêba kaînatê ye û gihiştina îdraka ku alem ji hikmet, îbret û tecellîyên îlahî îbaret û birîtî ye. Cenabê Heq di ayetên pîroz de dibêje:

“***Me erd û asîman û yên di navbera van de bi leystikvanî ne aferandine***.”[108]

“***Ma ji we were ku me hûn pûç û bêemanc aferandine û bi rastî hûnê li me neyêne vegerandin?***”[109]

Li gorî vê her îlm, divê însanî bi mûcibê ğaye û emanca aferîna wî, wî bibe ser hikmet û îbretê, divê wî bi temaşekirina li îhtîşama îlahî ya li kaînatê, bibe bigihîne hunermendê mûtleq. Cenabê Heq, xweza, bi çîçekên rengareng ên ku bêhnan ji bo rûh pêşkêş dikin, tezyîn kiriye. Sûretê ji her sûretî rûtirştir û abûstir jî dema van temaşe bike, wê în‘îkas û xwe şanîdanekê di rûhê wî de bike, wê bevkenî û tebessum di rûyê wî de xuya bibin. Ha di zanista botanîkê de ku nebat û gîyayan ji xwe re bi mijar dike jî, qelbê mûmînekî ku bi kemala îlmên naf‘î (zanîna bi feyde) gihabe, ewê bi çîçekistan û bexçeyekî

108. Dûxan, 44/38.
109. Mûmînûn, 23/115.

gul û çîçekan wergere ku bevkenî û tebessumê di rûyê temamê beşerîyetê de şîyar bike.

Xezîneyeke dîtira sirran ku têde hunera îlahî hatiye teşhîrkirin jî bedena însanî bi xwe ye. Doktorekî ku vê gencîneyê keşf bike û îlmê xwe bi îlmê naf'î bike, ewê bi heyran mayîna xwe ji şîyan û qudreta îlahî re bi wê fezîletê bigihe ku karibe ji ber Aferînerê wî bi nêrîna tewzû, şefqet û merhemetê li nexweşê xwe binêre.

Li alîyê din însanê ku nikaribe bi vê asoyê bigihe, heke ew di meqam û mewqî'yên îlmî û dinyayî de di nuqteya zirweyî de jî bibe, dîsa ew nuqsan û netemam e. Lewra bihayê îlmekî, bi gihana dilî û mûkemmelîyeta exlaqî ya ku feyda wan li dinya û axretê çêbibe, têne pîvan..

Tişta ku ji van tevan tê fehmkirin; rêya îlmê naf'î (zanîna bi feyde) di bicihbûna hinek xesletên manewî ya di dil de, derbas dibe. Yanî paqijbûna nefsê ji hemû sifetên xirab û neçê yên wekî rîya, kibr, temakarî, fexr, hezkirina ji mezinatîyê û her wiha ne, yên din jî; zerûrî ye ku dil di encama vê de bi exlaqê Mûhemmedî yên wekî teqwa, xuşû, merhemet, sebr, şukir, tewazû, qenaet, zuhd, wera, tewekkula bi Heqq, mûttesif bibe..

❁

Hezretê Îmamê Rebbanî, wê keş û hewa û çarçoveya ku îlmê naf'î (zanîna bi feyde) têde geş dibe, bi kurtî wiha eşkere dike, dibêje:

"*Ey bira-dînê min! Tişta ku berî her tiştî ji me tevan re lazim tê, tenzîmkirina eqîdeya me li gorî kîtab û sunnetê ye. Ehlê Bid'at û dalaletê, hukm û îtîqadên batil ên xwe li gorî kîtab û sunnetê zen dikin. Haleveku îtîqadên wan fersex bi fersex ji heq û heqîqetê dûr in.*"

Piştî vê jî zanîna bi hukmên dînî, helal û heramên wî, ferz, wacib û sunnetên wî û tetbîqkirina van bi awayê amelên salih lazim e. Lêbelê ji bo bicihkirina van tevan bi maneyeke kamil jî her dem zerûrî ye ku mirov tesfîya qelbî û tezkîya nefsê bike. Lewra heke îtîqad ne tekûz be, hîç ti feyda zanîna bi hukmên dînî çênabe; heke mirov bi hukmên dînî nizanibe jî hîç ti feydeyeke kirina amelan çênabe; heke amel jî neyên kirin hîç ti feydeyeke tesfîya qelbî û tezkîya nefsê çênabe; heke tesfîye û tezkîye jî bicih neyên jî hîç ti feydeyeke îtîqad, amel û îlm çênabe..

Ha bes di zemîn û pêgeheke ku ev esasên bingehîn têde hatibin pêkanîn de îlm û bizavên ku wê werin înkîşafkirin, hingê wê bikevin daîreya îlmê naf'î (zanîna bi feyde) û ewê hingê bibin ku mahîyeta marîfetê qezenc kiribin.

**Ey Rebbê me! Em ji te dixwazim ku tu tim û daîm me bi îlmê naf'î rizqdar bikî, em ji her cure îlmê ku feyde nade xwe diavêjin ber penaha te!.. Me bike ji wan kesên ku bi îlmê xwe amel dikin! Me bike ji wan bextiyaran ku îlmê xwe bi îrfan dikin, hildigerin asîmanê marîfetûllah'îyê û bi vî awayî bi mîraca xwe digihin!..**

**Amîn!..**

# BEŞA DUYEM

## Terbîya Tesewwufî
### (Seyr û Silûk)




“**Bêşiwar ew kesê ku xwe paqij kiribe, bi rizgarîyê gihaye**.” (‘Ela, 87/14.)

# TERBIYA TESEWWUFÎ

*(Seyr û Silûk)*

**Tesewwuf, mektebeke manewî ye ku têde terbîya nefsê û tesfîya qelb di destê mûrebbîyên rastîn ên warisên Hezretê Pêğember de hatiye kirin.**

Însan bi îstîdad (amadekarî) û îqtîdarên (şîyanên) xwe di astên cuda cuda de hatine aferandin. Perwerde di tesewwufê de bi îstîdad û îqtîdara salikî, li gorî mîzaca wî ye. Mîzac jî ji ber ku tam bi temamî nayê guherandin, bi qasî ku ew bi fermanên îlahî were terbîyekirin û ber û alî jê re were dîyarkirin, wê gihana ku tê arzûkirin, hasil bibe. Li hemberî ku şerîatê ji bo gelemperîyê taybet û ji bo herkesî heman qaîde danîne, di tesewwufê de ji salikî (ewê ku li pey rêç û şopa tesewwufê diçe) re, aynî wekî berçavkên bijimar ku ji ferdekî ji bo ferdekî din diguherin, rêya bikaranîna rêbaz û metodên terbîyewî, perwerdehî hatiye bi terwîckirin.. Zen û gumana ku dibe di navbera van herduyan de tezad û nakokî hebe, şaş e. Lewra mûnasebeta tesewwuf û şerîatê bi mîsala meşhûr bi pergelekê hatiye şibihandin. Lingê sabitê pergelê şerîat e, lingê bi bizavê wê jî tesewwuf e. Naxwe mesafe û vekirîbûna di navbera van herduyan de jî dikare li gorî mîzac û amadekarîya berpeyvî were kêmkirin û zêdekirin.

Li alîyê din jî ev endazên hessas ên tesewwufê, ji bo mirovên ku rîayetkirina emr (ferman) û nehyên (qedeğeyên) Xuda îkmal kiribin, mewzûbehs e (mijara axaftinê ye). Bi vê sebebê mûtesewwifên rastîn, ew kes in ku alemên zahirî yên xwe sererast kirine û berê xwe dane ser terbîyekirina alema hundurîna xwe. Ew di nav wê ğeyret û hewldanê de ne, ku kemalata zahirî bi înkîşafa batinî jî tacdar bikin. Lewra divê însan ji bîra xwe dûr neke ku heke çi qeder îslah û îkmala zahirî giring be jî lêbelê esil ya ku ber û alî ji îrade û vîyanê re dîyar dike hissên ekserîya ne. Cihê hissan jî qelb e.

Yek ji wan destûrên hessas ên ku Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di terbîya manewî de taqîb kirî, îtab nekirina li berpeyvê xwe, heta bi qusûr di xwe de dîtinê jî îqazkirina mûxatebî ye. Bi gellek wesîleyan peyvên

wî yên bi vî awayî; “*çi ji min bûye ku ez we wiha dibînim.*”[110] ji bo vê destûrê mîsaleke tîpîk e. Çawa dema ji zilamekî peyveke neçê digiha Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-, wî nedigot: “Çima filan keso wiha gotiye?” Lêbelê wî digot: “*Çi li mirovan qewimiye ku wiha û wiha dibêjin?*”[111]

Ehlê dil ku bi van endazên riqqet û hessasîyetê bend in jî ji bo xwe bi şîar kirine ku mûaxezê (li xwe girtinê) li nefsa xwe digrin û berê mûsamehê jî didin mûxatebê xwe. Ji ber ku ew ji zahirî bêhtir bi paqijîya dil, yanî bi terbîya dil re meşğûl dibin, dilebikin, heta bi merhemet û mûsamehayê ji gunehkaran jî nêzîk dibin. Lewra derdê wan ne gunehkar in; lêbelê derdê wan berterefkirina gunehan bi xwe ye. Bi vê sebebê, berî însan halên neçê yên xwe sererast bike, divê ew bi feyz û bereketa sohbetê (hevaltîya bi qencên Xuda re) dilên xwe nerm bikin û ji bo îslahê hazir bikin. Ew bahozên hêrs û ğezeba di nefsên xwe de didin rawestandin û pêgeh û zemînê ji bo ji xwe re cih dîtina bahorên şîrîn ên poşmanîyê, hazir dikin.

Piştî Yûsuf -eleyhisselam- rêberekî bêhempa yê hîdayetê ye, bi wê fezîletê gihaye ku karibe ji bo rizamendîya Heq Teala eyb û qusûrên ku li dijî şexsên wî hatine kirin jibîr bike, wan neke mijara axaftinê, dema ew bû ezîzê Misrê, wî karî wan birayên xwe yên ku di wextê xwe de qesda kuştina wî kiribûn û ew avêtibûn bîrê jî. Lêbelê dema wan arîkarî jê xwest, wî daxwaza wan venegerand, xwe ji wan re eşkere nekir, ji wan re îzaz, îkram û îhsan kirin. Bi vî awayî nezaketeke wisan şanî da ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî.. Haleveku wî di wê demê de bi hêz û selteneta di dest xwe de karîbû heyfa xwe ji birayên xwe hilîne. Lêbelê wî bi minnetkirinê qusûrên wan nedane rûyên wan, dilên wan neşikand, li hemberî xirabîya wan bi xwe jî qencî li wan kir.. Cenabê Heq di ayeta pîroz de wê mûamela ciwana ku Yûsuf -eleyhisselam- bi birayên xwe re kiribû, wiha eşkere dike, dibêje:

“(Yûsuf) **Got:**

**«-Îro şermezarî ji we re nîn e. Bila Xuda we efû bike! Ew, bi merhemettirînê merhemetmendan e.»**”[112]

Ew bira jî li hemberî van helwest û bizavên esilzadeyî û alîcenabane poşmanî û nedameta xwe şanî dan û ew bûne tobedar. Wan çêtirbûnîya Yûsuf

110. Binêrin. Mûslim, Selat, 119; Ebûdawud, Xatem, 4; Edeb, 14.
111. Ebûdawud, Edeb, 5/4788.
112. Yûsuf, 12/92.

-eleyhisselam- qebûl kir û heqqanîyeta wî tesdîq kir. Encama ku hatibû xwestin jî bi vî awayî hasil bû.

Ev mîsala li jêrê jî, ya tezahureke dîtira metoda vê perwerde û terbîyê ye:

Çend xortên ğafil li kenarê Dîcle rûniştibûn, şerab vedixwarin û keyf dikirin. Yek ji dostên Heq ên meşhûr Marûfê Kerxî -quddîse sirruh- jî di wir re dibûrî. Xortên ku keyf dibûrandin, keyfa wan li wan herimî. Lewra ew dihizirîn ku vêga ev şêx, wê ji bo mel'aneta ku wan dikir ji bo helaka wan nifiran li wan bike. Bi hêrsa ji vê jî yekî ji navbera wan hew karî xwe bigre, rabû ser xwe û bi helwesteke tinaz-pêkerane jê re got:

"-Ya Şêx! De heydê nesekine, dest bi nifiran bike ji bo em di vê ava boş û hara Dîclê de ğerq bibin, herin helakê!."

Hezretê Marûf ti berateyeke hêrsê şanî neda, destên xwe yên merhemetê bi jorê ve rakirin û got:

"-Ya Îlahî! Çawa te li dinyayê zindîtîya xweş daye van xortên agîd wilo li axretê jî zindîtîyê bide wan."

Wan xortan li hemberî vê helwesta ku hêvî nedikirin jê re gotin:

"-Ya Şêx! Hûn çi dibêjin? Me maneya vê peyvê fehm nekir."

Bi bereketa îxlasa wî, Cenabê Heq bereketa tesîrê da van peyvên kurt û sade yên Hezretê Marûfê Kerxî -quddîse sirruh- vêca wî ji wan re wiha got:

"-Zarokên min! Heke Heq Teala bixwaze li axretê zindîtîyê bide we, ewê tobekirinê bike nesîbê we."

Wan agîdan li hemberî vê helwest û bizava şefqetkarane ya ku hêvî nedikirin, pêşî nezanîn ka ewê çi bersivê bidinê. Piştre bi poşmanîya ku hestpê kirin heta mûddetekê di mûhaseba nefsê de ğerq bûn. Ji nişka ve bi xwe hatin, ji ğefleta xwe şîyar bûn, di nav nedametê de şerabên xwe rêhtin, harbûnîyên xwe şikandin û tobe kirin. Ew ji bo seadet û selametîya herdu cîhanan bûne talebkar.

Wekî ku me li jorê bibîranî, xusûsîyeteke dîgera terbîya dilî ya di tesewwufê de jî tetbîqkirina wê ya metodeke îslah û îrşadê ya li gorî mîzaca her ferdî ye. Ji ber ku mîzaca ferdan firqdar e, metoda terbîye û telqîna wan jî ferqdar e, ha pirr-cureyî'ya terîqetan, ji zerûreta vê ferqdarîya metoda terbîye

û telqîna wan diwelide. Mesela bi gelemperî însanekî mîzac bicoş, di usûlên ku Qadirîtî taqîb dike de hê bi hêsanîtir tereqqîyê dike. Ew kesên mîzac şair, hunermend û romantîk jî di Mewlewîtîyê de hizûr û dilşadîyê dibînin. Însanên bi mîzac weqûr û sakin jî di terîqeta Neqşîbendîyê de ji xwe re mûnasibtîyekê dibînin. Ji ber vê jî, ew ji usûlên terbîye û telqînên wê rêyê re hê bi hêsantir wek rambûyî ji bo xwe îmkana tereqqîyê dibînin.

Tinekirina mîzacê bê îmkan e. Ji lewma mûrşidên kamil jî bes bi vê wezîfedar in ku nehêlin îstîdadên di mîzaca salikan de bi mecraya nefsanî ve biherikin û berê wan didin ser emanc û ğayeyên bilind. Ew ji her şagirt û talebeyî re receteyên tedawîya xusûsî pêşkêş dikin ku ew ji bo nexweşîyên şexsî yên di alema manewî ya wî de bibe çare.

Erebên serdema Cahilîyetê, ew kesên dil-kevir bûn ku hê bi sağî keçbiçûkên xwe binax dikirin. Ew însanên civakeke wisan ji şefqet û merhemetê bêpar bûn ku bi nêrîna wan mafê xurtan hebû, lêbelê mirovên lawaz jî ji her cure palpişt, penah û destekê mehrûm bûn. Ha ev civaka ev qeder berbat jî, hatin ser hîdayetê û bi terbîya manewî ya Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- li dinyayê bûne mûmtaztirîn însan. Wan mehebbeta ku di dilên xwe de li hemberî Xuda û Pêğemberê wî hestpê dikirin, ew tim û daîm di dilê xwe de taze û zindî girtin, bi vê zindîtîya ku qezenc kiribûn jî, dilên wan ji îbadetên bi xuşûê tije bûn. Menqîbeyên fezîleta wan heta qiyametê ji ser zimanê misliman nakevin û ew ji bo exlaqê hemîde bûne mîsal ku tim daîm misliman alema dilîya xwe bi wan tenwîr û rohnî dikin. Ji wan re “eshabê kîram” hate gotin.

Eshabê Kîram di terbîya Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de bi sewîyekeke manewî ya wisan gihabûn ku Ebdûllah bin Mesûd -radîyellahû anhû- ev rewş bi van peyvên xwe îfade kiriye, gotiye:

“-Em ketibûn rewşeke wisan ku êdî me tesbîhatên parîyên xwarinê yên ku dihatin xwarin jî dibihîstin.”[113]

Ha tesewwuf, ew rêyeke bilinda para xwe girtina ji vê sewîya manewî ye ku eshabê kîram bi saya tezkîye û terbîya li ber destê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- pê gihabûn. Yanî tesewwuf mektebeke manewî ye ku têde li ber destê mûrebbîyên rastîn yên ku ji Hezretê Pêğember re bûne waris, nefs tê terbîyekirin û qelb jî têne tesfîyekirin. Ji bo çûna vê mekteba terbîya manewî û mesafe qutkirina di rêya bûna însanê kamil de “**seyr û silûk**” tê gotin.

113. Buxarî, Menaqib, 25.

**Ewê ku nefsa xwe nas bike ewê Rebbê xwe jî nas bike..**

## A. NEFS Û TEZKÎYA WÊ

### 1. MAHÎYETA NEFSÊ

Cenabê Heq, bapîrê nifşa mirovan Adem -eleyhisselam- bi mûkerremtirînê mexlûqatan kir û ew li cennetê aferand. Lêbelê wek îcaba şeref û îtîbara ku Heq Teala ji Hezretê Adem û kinêsa wî re bexş kirî, xwest ku ew sirf ne bi lutfa wî tenê li cennetê bimînin; lêbelê ew di encama îstihqaqê de, yanî ew di hemberê bedelekê de wek mûkafat bicih were. Ji bo bicih-hatina vê mirada îlahî jî Adem-eleyhisselam- bi wê zelle'ya malûm dûçar bû û bi vê sebeba zahirî jî ew ji welatê xwe yê esilî, yanî ew ji cennetê hate bi derxistin û bi dinyayê hate şandin ku ew alema ezmûn û îmtîhanê ye.

Ji bo Hezretê Adem û kinêsa xwe dubare karibin wek tecellîya mûkafatekê li cennetê vegerin û biçinê, lazim bûye ku însan hinek zehmetîyan derbas bike.

Ha bi vê sebebê Cenabê Heq, Hezretê Adem û kinêsa wî wek ji heyberên din cuda ji tecellîyên hevzid û dijber re bi mezher kirine. Di encama vê de jî hatiye bi meqsûdkirin; ew di mewqîyekî ku heq kiribin de bibin. Ew dikarin di navbera jêrtirîna jêran de bin, ku ew bi maneya "**esfela safilîn**"a ye. Yan jî ew dikarin di meqamê bilindtirînê bilindan de bin ku ew bi maneya "'**ela-ya 'îllîyyîn**"a ye. Yanî ew însanê ku eşrefê mexlûqata ye, ewê hem bi sermayeyê fitrî yê xwe, hem jî bi bikaranîna îradeya cuz'îya xwe ku wê ji bo xêrê, yan jî ji bo şerrê bibe medar. Yanî însan dikare bi îradeya cuz'îya xwe cihê xwe di nuqteyekê de bigre ku ew "**bel hum edall**"be, yanî ew dikare cihê xwe di mewqîyeke ji ya "**heywanan jî hê berjêrtir**" de bigre. Dîsa ew bi îradeya cuz'îya xwe dikare cihê xwe di nuqteyeke ji "**melaîketan jî hê çêtir**" de digre. Ev jî dê bi ğeyret û hewldana bendeyî çêbibe. Ew li gorî hasilbûna netîca têkoşîna di navbera temayulên çê û neçê yên di fitreta însanî mewcûd

de, bicih tên. Naxwe bi hinek temayulên mûsbet techîzbûna însanî û bi hinek temayulên menfî malûlbûna wî jî li ser esasê vê hikmetê hatiye avakirin.

Bi têgihiştina tesewwufî, pevrebûna temayulên mûsbet û menfî di însanî de jî ji wan merkezan peyda dibe ku jê re "rûhê heywanî" û "rûhê sultanî" tê gotin.

**Rûhê heywanî**, hêzeke letîf e, dewamkirina heyatîyetîya însanî temîn dike û hukm li pêkhata bîyolojîk dike ku jê re "**can**" yan jî "**nefs**" tê gotin. Ji ber ku rûhê heywanî di însanê razayî de li ser îcrakirina hukmê xwe berdewam dike, gellek failîyetên bîyolojîk jî di vê esnayê de ğeyrê îradî berdewam dikin. Herçî rûhê sultanî ye, dema însanê razayî şîyar dibe ew bi şûn de vedigere û wî terk dike. Ew rûhê ku bedenê dide bizavkirin, wê dide axaftin, welhasil ji bo îcra û îfakirina her cure failîyetan sebebê pêktîne, lêbelê bi mirinê re ji bedenê derdikeve, rûhê heywanî ye. Navenda wî mejî ye yan jî dil e, ew li ser hemû endaman belav bûye û hukmranîya esilîya xwe jî li ser xwînê damezirandiye. Ev rûhê ku ji **alema Xelq**'ê[114] ye, û nuqteya destpêka bizavan pêktîne, heke ew neyê terbîyekirin dikare li ser însanî hinek teserrufatîyên menfî bike.

Herçî **Rûhê Sultanî** ye jî ew rûh e ku Cenabê Heq ji rûhê xwe ew di însanî de pif kiriye ku ji xwe ev taybetmendî ye, ya ku însanî ji candarên din vediqetîne. Ev rûhê ku ji **alema Emir**[115] e, bi bedenê re bûna wî ji bo kirina teserrufatîyên mûsbet e. Bi vî rûhê ku di bedena însanî de hatiye xistinê, evdînî û taet tê kirin, ber û alî, bi ser amelên salih ve tê dayîn. Ev rûh, ji mirina bedenê û piştre ji rizîna wê û tinebûna wê ti tesîr lê çênabe. Lêbelê bi mirinê re teserrufatîya wî li ser bedenê bi dawî dibe.

Însan, bi karkirina van herdu cemserên hevdij ên di hundurê xwe de îstîqametê dide hal û bizavên xwe. Dema rûhê sultanî ğalib dibe, însan berê xwe dide ser amelên salih û exlaqê xweş; bi berevajî vê dema rûhê heywanî ğalib dibe jî însan dikeve her cure gunehan û bêexlaqîyan.

---

114. **Alema Xelq'ê**: Ew alem e ku ji heyberên wek bi zeman û mekanî ve mûqeyyed h - tine aferandin, pêkhatiye. Ji vê alemê re alema mulk, yan jî alema şehadetê jî jê re tê gotin. Ew tiştên ku em bi her pênc hestpêkerên zahirî yên xwe hiss dikin, ji vê alemê ne.

115. **Alema Emir**: Ew alem e ku bêyî zeman û madde mewzûbehs be bi fermana Cenabê Heqê ya "Kun" (Çêbibe) hatiye wicûdê. Ji vê re alema melekût yan jî alema xeybê jî tê gotin. Aqil, nefs, rûh, dil, sirr û letaîfên wekî van yên vê alemê ne.

Ji ber ku Kurê-însan, bi pîvaneke diyarkirî ji bo wê îstîdad û wan îmkanan hatiye bi xwedîkirin ku karibe bi îradeya xwe şekl û awa bide nefsa xwe, ew heybereke ku dikare hem ji bo mûkafatê, hem jî ji bo mûcazatê bibe mûxateb.

“**Nefs**” yek ji astengên mezintirîn e ku divê însan di îmtîhana xwe ya dinyayê de wê derbas bike, bi gelemperî wan temayulên menfî tîne aqilê însanî ku ew bi wan re rûbirû dimîne. Haleveku di wî bi xwe de wekî gewherekê mahîyeteke mûsbet jî heye. Peywir û wezîfeya Kurê-însan, wê bi terbîya manewî, ji menfîtîyên di hukmê ax-tozê de ne, paqij bike û gewhera di rasteqîneya wê de derîne holê.

Dema însanek diçe ğerîbîyê çawa kar û kêferatê dike ji bo destevala nevegere welatê xwe, ev dinyaya ku mezintirîn warê ğerîbîyê ye jî divê însan têde wisan ji bo seadeta axretê jî cehd û ğeyretê şanî bide. Lewra her însan, ji vê dinyayê seadeta ebedîya xwe yan jî xusrana xwe dibe axretê, yanî bi vê nêrînê însan, li heyata xwe ya dinyayê qedera paşwexta xwe dîyar dike.

Yek ji mercên bingehîn ên seadet û selametîya ebedî jî, bi qiwameke wisan gihandina nefsê ye ku ew ji bo amelên salih bibe medar. Nefsa ji ğaye û emanceke wiha mehrûm û bêpar, wekî hespekî har û hêşerî ye. Hespê har, di şûna ku xwediyê xwe bibe bigihîne qunağa wî de, wî di kendalê asê de wer dike, li hev totlanî dike û ji bo mirina wî dibe sersebeb. Lêbelê heke hespekî siwarîyê baş were terbîyekirin, çak were bi gem û liğabkirin, ewê di rêyên bi xeterdartirîn de jî xwediyê xwe bi selametî hilgire û bibe bigihîne qunağa wî. Çawa bi hespekî terbîye-nekirî gihiştina hedef û qunağa ku tê arzûkirin ne mûmkin be, aynî wisan bi nefseke îslah nekirî û di bin kontrolê de negirtî jî tehqîqkirina emanca bilinda jîyanê jî, ne mûmkin e.

Bi rastî nefs, wasîteyeke du-rû ye ku dikare ji navbera mexlûqatan însanî bilind bike, bigihîne meqamekî mûkerrem, hem jî wek ziddê vê dikare însanî bixe esfela safilînê, wî bixe jêrtirîna jêran. Dema ew were îslahkirin ew ji wê îstîdadê re xwedî ye ku karibe ji bo xêrê bibe wesîle. Lêbelê dema ew neyê îslahkirin jî ew ji bo wê îstîdadê xwedî ye ku karibe ji bo xirabîyê bibe wesîle. Adeta ew wekî kêreke du-dev e.

Her nefsa ji îrşada manewî û kontrolê mehrûm be, ew ji bo mehkûmîyeteke ğemnak û tehl sersebeb e ku heqîqetan bi ğefletê dinixumîne. Lêbelê wekî ku me li jorê gotî însan, heke digel astenga nefsê jî ji exlaqê mezmûm rizgar bibe û were tezkîyekirin, ew dikare (di qencîyan de) ji melaîketan, ji

ferîşteyan jî derbas bibe. Lewra şeref her encamê, bi qasî wan zehmetîyên ku ji bo gihiştina wê hatine berterefkirin, dibe.

Dîsa her sifetên mezmûmên nefsê ne, ewên ku wek perdeyeke ğefletê dikevin navbera Xuda û bendeyê wî. Vêca evdî ji îstîqameta esilî ya wî dûr dikin û dilan bi ser meşğûlîyetên bi ğeyrê Xuda ve diajon. Bes bi usûlên terbîyewî yên ku bi biryardarîyeke jidil wan tetbîq bikin, dikare li hemberî îştiyaq û îhtîrasên suflî yên wê yên ku nizanin biqedin û xilas bibin, were rawestan. Maneya vê jî têkoşîneke bêeman e ku ew jî ezim û hîşyarîyeke daîmî dixwaze. Bi vê sebebê ye ku Mezinê Aleman di hedîseke şerîfa xwe de gotiye:

اَلْمُجَاهِدُ مَنْ جَاهَدَ نَفْسَهُ

*"(Di rastîyê de) Mûcahid ew kes e ku li dijî nefsa xwe cîhadê dike."*[116]

Nefs, bi mûcahede'ya ku li dijî wê tê kirin namire, lêbelê ew bi mûcahede'ya li dijî wê dikare di bin kontrolê de were girtin. Ji xwe ya metlûb jî ne tinekirina nefsê ye, lêbelê bi dûrkirina wê ji zêdegavîyan û bi destûrên ji rizamendîya îlahî re ahengdar sînordarkirin û terbîyekirina arzû û temayulên wê ye. Di vê mijarê de Îmam Ğezalî, însanî bi siwarekî dişibihîne û wiha dibêje:

"Nefs, merkeba rûh e. Heke însan, hefsarên nefsa xwe ji dest xwe berde û xwe bi îstîqameta ku ew pê ve diçe ve berde, helakbûna wî mûqedder e. (Wekî di olên Hindistanî û hinek felsefeyên mîstîk de jî hatiye kirin) Heke însan hewl bide wê bikuje, di vê carê de ewê di rêya heqîqetê de bê merkeb bimîne.. Naxwe hefsarên nefsa xwe di dest xwe de bigre û ji merkeba xwe îstîfade bike!"

Di terbîya nefsê de rîayetkirina vê pîvanê, di heman demê de mûqtezaya usûla nebewî ye jî. Lewra Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ew kes ji kirina wan asteng kiribûn ku hewl dabûn nexwin, venexwin, jîyana malbatî nejîn û xwe dabûne îbadetê. Wî li wan hîn kiribû ku di Îslamê de tecerrud û rahibtîyeke bi vî rengî nîn e, ji wan re rê şanî dabû ku di nav jîyanê de û dema mirov bi cemîyetê re be jî dîsa rêya tereqqîya rûhî mûmkin e.

Li alîyê din di esnaya vê terbîyê de ku têkoşîneke zehf zehmet e, însan di hal û mertebeyên nefsê de bi hinek qunağ û merheleyan re hevrû dibe. Yek

116. Tirmizî, Fezaîlû'l-Cîhad, 2; Ahmed b. Henbel, Mûsned, VI, 20.

ji mezintirîn afetên nefsê jî di esnaya vê tebeddûlat (guhertin) û tereqqîya ku derbas dike de xwe bi wehma ez jî heyberek im, ve berde û xwe bi xwe ecibandinê ve bikişkişîne. Heke di têkoşîna ku li dijî nefsê tê kirin de îhmaleke biçûçiktirîn û sistahîyek were meydanê, ewê derhal li halê berê yê xwe vegere. Lewra ji ber ku ew tim di kemînê de ye, naxwe însan hîç nikare ji xirabîya wê ewle bibe.

Bi vê sebebê her mûmîn, divê daîm şîyarbûna xwe li hemberî xeterên kujerên van mûessir û kargêrîyên ku di hemêza xwe de hildigre, ji bo jîyana manewî, zerûret zanibe. Divê ew bi îradeyeke ku bi mûhakemeyeke selîm û wehyê hatî terbîyekirin, li hemberê serkêşîyên nefsê raweste û wê di îtaetê de bigre.

Gelo tezkîya wê nefsa ku di mewqîyê merkeba însanî de ye, lêbelê di fitreta wê de temayula harbûnîyê jî heye, dê çawa bibe? Ji bilî vê jî gelo mirov di vê terbîye û tezkîya nefsê de dikare bigihîje kîjan qunağ û merheleyan? Ha emê li vir li ser van herdu mijarên zehf giring rawestin.

Ya giring, mirov bibe gul-sirişt. Yanî mirov li vî bexçê dinyayê strîyan bibîne, ji wan biêşe, lê nebe strî, çendan janên wekî zivistanê bikevin navberê jî dîsa mirov bi keş û hewaya biharê wan hemêz bike û karibe ji bo temamê alemê bibe gulek.

## 2. TEZKÎYA NEFSÊ

**Tezkîye** di ferhengê de, li kêleka maneyên; temîz bûn, paqij bûnê maneyên wekî zêde-kirin, pêşveçûn, bibereket-kirin û bifeyzkirin jî di xwe de dihewîne. Di vê çarçoveyê de, di esasê xwe de ew temamê rêveçûn û seyra perwerdeya manewî, îfade dike.

Tezkîya nefsê; berî her tiştî paqijkirina wê ji kufrê, cehalet, hestên xirab, îtîqadên batil û exlaqên neçê ye. Yanî paqijkirina wê ji her cure çewtîyên îtîqadî, exlaqî û amelî ye ku ew li dijî Şer'a Şerîf in. Piştî mirov ew temîz kir û ji bed-karîyan rizgar kir jî, mirov wê bi îman, îlm, îrfan, hikmet, hestên çê, xuyên ciwan û xesletên her wekî teqwayê jî terbîye û tezyîn bike û wê bi rûhanîyetê tije bike.

Tezkîye di tesewwufê de, bi kêmkirina xwestekên nefsê, şikandina desthilatîya wê li ser bedenê û bi vî awayî jî dabînkirina îmkanê ji bo desthilatîya rûh e. Ev jî bes dikare bi rêya rîyazatan ya bi xurtkirina îradeyê li hemberî nefsê, yanî bi rîayetkirina usûlên îtîdalê yên wekî xwarin, vexwarin, razan û axaftinê, were temînkirin.. Ji ber vê ye ku di tesewwufê de usûla hefsar xistina serê nefsê her wiha hatiye gotin; **qilleta te'amê** (hindik xwarin, xwarin e), **qilleta menamê** (hindik razan) û **qilleta kelam** (hindik axaftin) e. Lewra ev bi rîyazatê gava pêşîna ji bo hakîmîyeta li ser nefsê ye. Lêbelê wekî ku di her mijarê de jî wisa ye, di tetbîqkirina van usûlan de jî divê mirov îtîdalê ji dest xwe bernede. Lewra beden, ji mirovan re emanetek û sipareyeke Xuda ye.

Yanî bende, dema nefsa xwe tezkîye dike, divê ew xwe ji îfrat û tefrîtê biparêze, dema ew dibêje; ezê perdekekê li pêşîya harbûnî û zêdegavîyên

wê bikişînim jî divê ew di rîyazat û mûcahedê de zêdegavîyê neke. Lewra dîn, di her hal û hereketan de îtîdalê ferman dike. Li însanî şîret dike ku ew xwe ji her cure îfrat û tefrîtan dûr bike. Zêdebarî vê jî çawa bi awayê mûtleq berterefkirina nefsê ne mûmkin e, ev ne metlûb e jî. Li gorî vê tezkîyekirina nefsê, maneya wê di çarçoveya fermanên îlahî de bi hefsar xistina serê temayulên nefsanî terbîyekirina nefsê ye.

Terbîye û tezkîye-kirina nefsê, di bicih-hatina serencama beşerî wek felaket, yan jî seadet de dîyarkertirîn faktor e. Ji bo terbîye û tezkîyê jî îcab dike mirov pêşî ji îradeya îlahî re ram bibe û li hemberî îhtîrasên şehewî û rewşên xirab jî kar bike. Her mûmîn, divê qusûr, nuqsanî, eczîyet, hîçîtî û cahiltîya xwe îdrak bike; Rebbê xwe bi hemû ezamet, qudret û kemala wî ve fehm bike û bi vê îdrakê ji kirinên xwe re ber û alî dîyar bike. Heke mirov karibe vê bike, -bi tabîra Qur'anî- nefsa ku "**bi dijwarî xirabîyê ferman dike**"[117] ji sifetên mezmûm paqij dibe û tê, dikeve rewşeke meqbûl.

Kar kirin ji bo tezkîya nefsê û di ber vê de bi ğeyreteke ciddî ketina seyr û silûkê, ji ber giringîya wê û zehmetîya wê "**cîhada ekber**" (cîhada ji her cîhadê mezintir) hatiye qebûlkirin.

Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi xwe di vegera ji "Ğezweya Tebûkê" ya ku zehf zor û zehmet derbas bûbû de ev tabîr îfade kiribû û ji eshabê xwe re gotibû:

"*-Em, vêga ji cîhada biçûk vegerin cîhada mezin*."

Haleveku ew sefera jê vedigerîyan, ğezweyeke zehf mezin bûye. Lewra ji destpêka seferê heta bi dawîya wê fitneyên mûnafiqan û wesweseyên şeytanî kêm nebûbûn. Wê salê germahîyeke dijwar û hişkesalîyekê hukm dewam kiribûn. Ew rêya ku hatibû qutkirin, heta tu bibêjî bes, dirêj bû û ji bo bi peyatî rêveçûnê jî ne mûsaid bû. Demsala berhevkirina hesada fêkîyan jî hatibû. Nûçeya ku bi wan gihabû; artêşeke qerebaliğa Bîzansê li hêvîya we ye jî ev sefer hê bêhtir bi ğezweyeke zortir dikir. Artêşa ji sih hezaran bêhtira sehabîyan, hezar kîlometreyan birêve çûbû û bi şûn de vegerîyabû. Dema ew ji Medînê nêzîk dibûn, adeta şeklên wê guherîbûn. Çermên wan bi hestîyên wan ve zeliqîbûn û rih û pora wan tevlîhev bûbûn. Dema rewş ev bû, hinek sehabîyên ku hikmeta vê peyva Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotî, meraq dikirin, dema wan di nav heyret û meraqan de jê re got:

117. Binêrin. Sûretê Yûsuf, 12/53.

"-Ya Resûlellah! Rewşa me li meydanê ye! Ma cîhada ji vê mezintir jî çêdibe?" Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

"*-Belê! Em vêga ji cîhada biçûk vedigerin cîhada mezintirîn; em vedigerin mûcahedeya bi nefsê re!*"[118]

Li alîyê din rewşa wan hersê sehabîyên ku di hemû ğezweyan de pişkdar bûbûn, lêbelê ji ber ku ew bêmazeret sade di Ğezweya Tebûkê de pişkdar nebûbûn, ew jê mabûn, ew bi menkirina ji îxtîlatê (têkilbûna însanan) hatibûne cezakirin û bi vê sebebê eshaban û Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî li rûyê wan nedimeyzandin, bi wan re nediaxivîn û heta silava wan jî venedigerandin, poşmanîya wan û perîşanîya wan, ya ku nayê teswîrkirin jî meşhûr e..[119]

Vêga em bi însaf bifikrin ku cîhadeke wiha cîhada biçûk tê jimartin û ji cîhada biçûk bi şûn de man, însanî hê li heyata vê dinyayê ev qeder heqîr (nehêja) û xecîl (şermende) dihêle, naxwe di mijara cîhada ji her cîhadê mezintir de ku tezkîya nefsan û tesfîya qelban e, ğeflet û îhmal dê sibehrojê li

118. Binêrin. Suyûtî, Camîus-Seğîr, II, 73; Mûnawî, III, 141/2873; Elî el-Mûtteqî, IV, 430/11260.

119. Ev hersê sehabe, Mûrare bin Rabîi'l-Amrî, Hîlal bin Umeyyeti'l-Waqifî û Şair K'ab bin Malik e. Ev di hemû ğezweyan de pişkdar bûbûn. Ji navbera wan ji K'ab pê ve herduyên din di Bedrê de jî pişkdar bûbûn. Lêbelê ji ber pişkdar nebûna wan di Tebûkê de ew çewtîya ku ketibûnê helwesta kuli hemberî wan hatibû girtin, dinya bi ferehîya xwe ve ji wan re teng hatibû. Ji xwe nexasim li hemberî berê xwe vegerandina eshaban û Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan û heta venegerandina silava wan jî serzemîn adeta ji wan re bi bîyanî bûbû. Ew wisan hatibûne terkkirin heta ku xanimên wan bi xwe jî ji wan re bûbûne wekî bîyanîyan. Lewra di bara wan de heta wehya îlahî were, her cure peywendî ji wan hatibû qutkirin û ew hatibûne tecrîdkirin. Ew bêçare bûn. Bi vê sebebê wan bi şev û rojê hêstirên poşmanîyê ji çavên xwe barandin. Ew bûbûne wekî mûmên helîyayî. Xeta kiribûn lêbelê ew ji îxlas, rastî, durustî, teslîmîyet û tobê dûr nebûbûn. Di vê minwalê de tam pêncih roj derbas bûn. Di dawîyê de ji ber ku wan rastî wekî heyî îtîraf kiribû û bi awayekî semîmî tobe kiribûn wek mûkafatekê ew bi vê ayeta pîroz ji bo lêborîn û efûyê hatin bi mezherkirin:
"**Xuda, her wisa tobeya wan herseyên ku rewşa wan bi paş de hatibû xistin jî qebûl kiriye. Erd, digel ferahiya xwe jî li wan teng bû, bêhn li wan çikiya û yeqîn kirin ku ji ber Xuda, dîsa ji xwe-avêtina ber penaha wî pê ve ti penaheke din nîn e. Piştre Xuda tobeya wan qebûl kir da ku vegerin rewşa xwe** (ya berê). **Bi rastî Xuda, her ew e, pirr tobewergir û dilovîn. Gelî yên ku îman anîne! Xwe ji Xuda biparêzin û her digel rastgoyan bibin**." (Tewbe, 9/118-119.) (Ji bo agahîyên bi tefsîlat binêrin. Osman Nuri TOPTAŞ, Nebîler Silsilesi, IV, 289-294).

hizûra îlahî însanî çi derecê ji bo rewş û wezîyeteke zor û mûşkil dûçar bike!.. Her mûmînê aqilmend, divê li pêşîya vê heqîqeta lerizîner derhal mûhasebeyeke kûr ji nefsa xwe bipirse. Hê sibehrojê zehf nebûyî dereng, em bêgav û mecbûr in ku berî hesabê îlahî were, em bi îradeya xwe hesabê ji xwe bi xwe bipirsin.

Lewra ev îqaza Mewlayê Mezinê me ğayet şêwe-tund e:

“**Ma ji we were ku me hûn pûç aferandine û hûnê li me neyêne vegerandin?**”[120]

Cenabê Heq di ayeteke dîger de jî gotiye:

“**Ma ji însanî were ku ewê bêserûber were hiştin?!**”[121]

Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- jî gotiye:

“*Aqilmend ew kes e ku li ser nefsa xwe dibe hakim, hesabê jê dipirse û ji bo jîyana piştî mirinê kar dike, kêmaqil jî ew kes e ku digel nefsa xwe bi dest hewesa wê ve berdaye jî hêvîyan (ên baş) ji Xuda dike.*”[122]

Li ser vî esasî divê her mûmîn, li hemberî nefsa xwe ya ku bi tezkîya wê mûkellef û berpirs e, bi hesta berpirsîyeke ciddî û jidil bizav bike. Dema însan hewl dide nefsa xwe tezkîye bike jî divê ew li ser giringî û usûlên vî karî jî waqif be. Di rewşeke berevajî de wekî ku di vê mîsalê de jî hatiye; «dema ew bibêje; bila ez birhan çêkim lê ew çavan dertîne» hingê dibe ku ew bikeve xeta û şaşîyan.

Cenabê Heq, em li hemberî xeterên nefsê wiha şîyar kirine, gotiye:

اَرَأَيْتَ مَنِ اتَّخَذَ اِلٰهَهُ هَوٰيهُ اَفَأَنْتَ تَكُونُ عَلَيْهِ وَكِيلا

“(Ya Resûlê min!) **Ma te ewê ku arzûyên nefsanî yên xwe ji xwe re bi îlah kirine, dît? Êdî ma tu yê ji wî re bibî wekîl?**”[123]

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa xwe de gotiye:

120. Mûmînûn, 23/115.
121. Qiuyame, 75/36.
122. Tirmizî, Qiyamet, 25; Îbnû Mace, Zuhd, 31.
123. Furqan, 25/43.

“-*Di bara ummeta xwe de tişta ku ez pirr jê ditirsim; li pey hewesên nefsa xwe çûna wan e.*”[124]

Bi vê sebebê ye ku tezkîya nefsê ji bo her mûmînî heta tu bibêjî bes bi giringîyeke jîyanî haiz e û keyfîyeteke ku ew ji bo berpirsîyeke mezin mûcib e. Cenabê Heq, vê berpirsîyê di Qur’ana Pîroz de bi vî awayî îfade dike, dibêje:

قَدْ اَفْلَحَ مَنْ زَكّٰيهَا وَ قَدْ خَابَ مَنْ دَسّٰيهَا

“**Bêşiwar kî nefsa xwe tezkîye kiribe** (û ew ji xirabîyan paqij kiribe) **bi xilasîyê gihaye, kî ew di xirabîyan de ğerq kiribe jî wî zîyan kiriye.**”[125] Yanî ewê ku nefsa xwe terbîye bike, wê biaqil bike, wî bi selametî rêya xwe qut kiriye, çûye merama xwe. Lê bi berevajî vê ewê ku nefsa xwe bi harbûnî û wehşîtîya wê bêserûber berde jî ew bi xusran û zîyana ebedî dûçar bûye. Wekî ku tê dîtin nefs, dema mirov bêpîvan li pey wê here, ew ji bo felaketeke ebedî dibe sersebeb. Lêbelê dema ew were terbîyekirin û di bin îtaetê de jî were girtin hingê ew navgîna qezenceke wisa ye ku însanî radike dixe meqamekî ji yê melaîketan jî hê çêtir.

Li alîyê din amelên salih ên her wekî înfaq, sedeqe û xizmetê heke çendan di zahirê xwe de di sûretê ji dîgeran re bifeyde xuya bibin jî lêbelê ew di heqîqetê de rastî sipehîtahî û xêrê li nefsê hîn dikin, telqîn dikin. Lewra qencî bi vî awayî di kesayetîya însanî de bicih dibin û rûh, bi van unsîyet û hogirîyê peyda dike. Digel amelên salih ên din xwendina Qur’ana Pîroz jî ku peyva ji her peyvan rasttir e, bi guhdîkî li şîretên wê guhdarî-kirin û bi ehkamên wê amel kirin jî yek ji mezintirîn wesîleyên îslaha nefsê ne. Bendeyekî ku jîyana xwe bi temamî di îstîqameta Qur’anê de tenzîm dike, ji şerrên nefsê û desîseyên şeytên rizgar dibe û di rewşa sade telebkirina rizamendîya Heq de dijî. Dilê wî ji bo tecellîyên lutfa îlahî bi mezher dibe. Ji bo bendeyekî ku bi vê rewşê hatibe, êdî ji keş û hewaya zahirî ya ku çav dibînin û guh dibihîzin bi wêdetir jê re panjûreke manewî hatiye vekirin û kaînat, jê re bûye pirtûkeke bi hikmet û bi ezamet.

124. Suyûtî, Camîus-Seğîr, I, 12.
125. Şems, 91/9-10.

Naxwe divê hîç ti mûmînek ji ferman û qedeğeyên îlahî yên di Qur'ana Pîroz de ğafil nemîne, divê ew seadet û selametîya ebedîya xwe neavêje xeterê.

❁

Di Pirtûka Mezina me Qur'ana Pîroz de bi tezkîya nefsê re têkildar gellek ayet hene. Di van ayetan de "tezkîye"; bi awayê

-Tezkîyekirina Xudê Teala,

-Tezkîyekirina Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-,

-Tezkîyekirina însanî ya nefsa xwe bi xwe, hatiye bikaranîn. Ew bi giştî di wan sê pişkan de hatiye mûtaleakirin.

## 1. Tezkîye-kirina Xudê Teala

Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha dibêje:

فَلا تُزَكُّوا أَنفُسَكُمْ هُوَ أَعْلَمُ بِمَنْ اتَّقَى.

"..**Xwe** (neecibînin û) **dernexin paqijîyê. Ew, baştir dizane kî xwe ji xirabîyan parastiye**."[126]

**Elmalilî Hemdî** Efendîyê merhûm vê ayetê wiha tefsîr dike:

"Xwe bêguneh, bêqusûr û tertemîz nejimêrin û pesnê xwe nedin. Lewra dibe ku gellek qusûrên we hebin û we ferq jî nexistibe wan."[127]

**Mûfessir Alûsî** jî di vê mijarê de wiha dibêje:

"Hatiye rîwayetkirin ku ev ayet, di bara civakekê de hatiye xwarê ku digotin: «Nimêjên me, rojîyên me û hecên me hene!» Naxwe bi endîşeya ucb û rîyakarîyê veşartina bendeyî ji bo îbadet û xêrên ku wî kirine, meqbûltir e. Lêbelê bêyî ku nîyeteke menfî ya wiha hebe, sirf bi meqsûda teşwîqkirinê di vegotina wan de jî ti beis û ğemek nîn e.."[128]

Cenabê Heq, di ayeteke din de wiha dibêje:

126. Necm, 53/32.
127. Hak Dînî, VII, 4605.
128. Rûhû'l-Meanî, XXVII, 64.

“**Ma te li wan kesên ku xwe derdixin paqijîyê nemeyzand? Bi berevajî vê, Xudê kê bixwaze, wî derdixe paqijîyê**.”[129]

Tezkîya di vê ayetê de ji wê hewldanê îbaret e ku însan pesnê xwe bide û xwe derxîne temîzîyê. Haleveku tezkîye bi teqwayê ve bend e. Teqwa jî sifetekî di batin de ye û sade Xuda bi tenê rastîya wê dizane. Bi vê nêrînê tezkîyekirina Xudê Teala tenê meqbûl dibe, ne tezkîyekirina me ya xwe bi xwe.

Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wiha dûa dikir, digot:

“*-Xudayê min! Bi teqwaya nefsa min bidiyê û wê tezkîye bike! Tu çêtirînê tezkîyekaran î. Tu welîyê wê û mewlayê wê yî.*”[130]

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

“**Heke kerem û rahma Xuda li ser we nebûna, hîç ti kes ji we heta bi hetayê dernediket paqijîyê. Lêbelê Xuda, kê bixwaze wî derdixe paqijîyê. Xuda, bi heqqê xwe dibihîze û bi kemala xwe her tiştî dizane**.”[131]

Wekî ku hate dîtin, ayeta pîroz jî dibêje; tezkîye ya Xuda ye. Lewra Xudê Teala, bi kerem û rahma xwe bendeyê xwe ji bo taetên xwe û ji bo bikaranîna wasîteyên din ên tezkîyê serfiraz dike. Li ser vî esasî divê bende, xwe ji ezperestî û îddîaya xwe “tiştek hesabkirinê” biparêze, bi kemala xwe ya ku bi xêra tezkîya îlahî gihayê, nebêje; ez bi ğeyret, dîrayet û lîyaqeta xwe gihame vê tezkîyê. Ji bilî tezkîyekirina Cenabê Heq wekî din divê bende di nav vê îdrakê de be ku ew bi xwe nikare xwe li axretê derxîne paqijîyê. Ev têgihiştin, yek ji giringtirîn wesîleyên gihiştina xilasîya ebedî ye. Lewra tezkîye, heke çi qeder ji hêla hewldan û ezimê ve ya însanî be; heke çi qeder ew ji hêla îrşad û talîmê ve bi wasiteya pêğemberan û bi wasiteya mûrşidên ku warisên wan e, were bidestxistin jî lêbelê dîsa di rastîyê de ew ne ya wan bi xwe ye lê ya Xuda ye.. Ji ber ku Cenabê Heq bi merhemeta îlahî ya xwe bendeyên xwe ji bo tezkîyê serfiraz dike, ew vê derfetê ji wan re diaferîne û ji wan re bexş dike, naxwe divê ew, ya Cenabê Heq were zanîn.

129. Nîsa, 4/49.
130. Mûslim, Zikr, 73.
131. Nûr, 24/21.

## 2. Tezkîye-kirina Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-

Di Qur’ana Pîroz de di bara peywir û wezîfeyên Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de wiha tê gotin:

كَمَا أَرْسَلْنَا فِيكُمْ رَسُولاً مِنْكُمْ يَتْلُو عَلَيْكُمْ آيَاتِنَا وَيُزَكِّيكُمْ وَيُعَلِّمُكُمْ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ وَيُعَلِّمُكُمْ مَا لَمْ تَكُونُوا تَعْلَمُونَ.

“(Gelî mirovan!) **Sûnd be ku me ji navbera we bi xwe pêğemberek ji we re şand. Ew, ayetên me ji we re dixwîne, ew we tezkîye dike, we ji xirabîyan paqij dike, kîtab û hikmetê li we talîm dike û tiştên ku hûn nizanin li we hîn dike**.”[132]

“**Sûnd be ku Xuda lutfeke mezin li mûmînan kiriye ku ji wan bi xwe pêğemberek ji wan re şandiye, ew ayetên Xuda ji wan re dixwîne, wan** (ji xirabîyan û ji înkarê) **paqij dike, kîtab û hikmetê li wan fêr dike. Haleveku ew berê di nav rêşaşîyeke eşkere de bûne**.”[133]

Wekî ku bi eşkerehî ji van ayetan tê fehmkirin; Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- sê wezîfeyên esilî yên wî hene:

a. **Xwendina ayetên Xuda ji mirovan re**:

Bangkirina pêğemberan ya ummetên xwe ji bo rêya heq, bi xwendina wehya ku hatî ya ji wan re destpê dike. Bi rastî ev wezîfe, di gihandina însanan ji bo emanc û hedefa ku tê hêvîkirin de qunağa pêşîn e û ew pêgehekê teşkîl dike.

b. **Tezkîye kirin**:

Bi meqsûda xwe gihana banga tewhîdê, bes bi paqijkirina nefsan ji qirêjên manewî yên wekî kufr, şirk û gunehan û bi gihandina wan ya ji bo xuşû û hizûrê mûmkin dibe. Çawa eshabê kîram ku rabûrîya wan însanê cahilîye bûne; lêbelê dema ew hatine ser hîdayetê û dema wan bi sohbeta feyzdara Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û terbîya manewî ya wî dilên xwe paqij kirin, hingê ew bûne mûmtaztirîn însanên dinyayê. Menqîbeyên fezîletê ku di zimanên wan û dilên wan de digerîyan sedsal û cih û war derbas kirin.

132. Beqere, 2/151.
133. Alî Îmran, 3/164.

c. **Hînkirina Kîtab û hikmetê**:

Di vê qunağê de talîmên Qur'ana Pîroz tên ku ew wan qanûnan û hukman eşkere dike ku divê însan wan tetbîq bike û bi xebera wan bike. Kûrbûna di rûhê Qur'ana Pîroz de bi sewîya dilî ve bend e. Qur'ana Pîroz, esil bi dil tê xwendin û tê fehmkirin. Çav jî ji bo dil bes di hukmê wasîteyeke besît de ne.

Qur'an, kaînat û însan, ji ber ku bi tecellîyên navên îlahî hatine meydanê, xezîneya bêdawîya sirran e. Ev sirr û hikmet jî li gorî paqijbûnîya dilî û kamilbûna wî di îdrakê de tecellî dibin.

Talîma hikmetê, di piştî van hemû qunağan de tê. Qur'ana Pîroz tecellîya wan navên îlahî ye ku Xudê Teala ew di şeklê kelamî de ji îdraka beşerî re tecellî kirine. Xudê Teala bes wan mirovên ku xwedî dilekî paqijbûyî bin ji hikmet û sirrên Qur'ana Pîroz waqif dike.

Di ayetên pîroz de pevre zikrkirina tezkîyê û talîma Kîtab û hikmetê, vê îfade dike; ew mirovên ku bi tezkîye nebûbin, nikarin îlmê bidest bixin, heke ew bidest bixin jî ev îlm dê ti feydeyekê ji wan bi xwe re temîn neke. Lewra îlm û hikmet, nûr û zîneteke wisa ye ku ji bo bidestxistina vê pêşî divê cihê wê û devera ku ew xwe pê bigre, yanî divê dil ji tiştên nelazim û bizirar hatibe texlîye û valakirin. Bi vê nêrînê, pêğember pêşî ayetan dixwînin, piştre bi van ayetan nefsên wan mirovên ku bi wan bawerî anîne û dilên xwe bi wan dane ji zêdegavîyan, ji mekrohîyan û ji neçêtîyan temîz dikin û dilên wan ji qirêjên manewî tesfîye dikin. Paştir jî kîtab û hikmetê li wan kesan talîm dikin ku bi tezkîye û tesfîye hatibin kirin. Bes kesên xwedî dilekî wiha ji bo darêj û herkên sirr û qudretê yên di kaînatê de çavnas û aşna dibin û ew dikarin bibin serkehnîyeke hikmetê.

Ji van wezîfeyên Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- xwendina ayetan û hînkirina helal û heramîyan dê ji terefê aliman ve; wezîfeya tezkîyekirina nefsan û tesfîyekirina qelban jî dê bi wasîteya mûrşidên kamil heta bi qiyametê her berdewam bike.

## 3. Nefsa Xwe Bi xwe Tezkîye Kirin

Cenabê Heq, di vê mijarê de wiha dibêje:

"**Bi nefsê û yê ku hinek qabilîyet dane wê û qencî û neqencîyên wê** (ficûr û teqwaya wê) **jê re îlham kirine, sûnd be ku**; **kî nefsa xwe ji xirabîyên wê** (ji qirêjên maddî û manewî yên wê) **temîz bike, hemin bi**

**xilasîyê gihaye; ewê ku ew di xirabîyan de jî noq kiribe helbet li xusranê ketiye**.” [134]

Bi mûqtezaya ayeta pîroz, bes ew kesên ku Xuda ew temîz kiribin, yanî ew kesên ku ji gunehan hatibin paqijkirin û bi feyz û teqwayê hatibin terbîyekirin bi xilasîya rastîn gihane.

Ev mizgînîya Heq Teala: “**Bikeve nav bendeyên** (salih ên) **min û biçe cenneta min**.”[135] jî dîsa di bara van bendeyên bextewar de ye.

Cenabê Heq di ayeteke din de jî dibêje:

قَدْ أَفْلَحَ مَنْ تَزَكَّى. وَذَكَرَ اسْمَ رَبِّهِ فَصَلَّى.

“**Bi rastî ew kesê ku xwe paqij bike, navê Rebbê xwe zikr bike û evdînîyê jê re bike, bêşiwar bi xilasîyê gihaye**.”[136]

Rêzebendîya di ayeta pîroz de jî caliba diqqetê ye. Ew jî wiha ye:

-Bi awayekî sipehî paqijkirina dil, beden û mal ji neçêtîyan e,

-Bi xêra vê rakirin û avêtina wan perdeyên ğefletê ye ku ketine navbera Xuda û bendeyê wî,

-Piştre jî bi bedeneke ku xureka xwe ji xwarinên helal wergirtî û bi dilekî zikrkar di nav xuşûê de ketina keş û hewaya îbadetê ye û tezyînkirina dil ya bi lezzetên rûhanî ye.

Bi wechê beyana **Mûfessir Bûrsewî**:

“Di vê ayetê de ji bo paqijkirina nefsê ji tiştên li dijî şerîatê, ji bo valakirina dil ji hezkirina dinyayê, ji bo bi qasî hêza xwe berê xwe dana alîyê Xuda, heta ji bo **xwe parastina ji di bîra xwe anîna dîgerên Xuda jî** îşaret heye.”[137]

Çawa ji dostên Heq Ebûbekr el-Kettanî -quddîse sirruh- dema li ser doşeka mirinê bû, jê hate pirskirin; te amelekî wekî çi heye? Wî bi van peyvên

134. Şems, 91/1-10.
135. Fecr, 89/29-30.
136. ‘Ela, 87/14-15.
137. Rûhû’l-Beyan, X, 410.

xwe yên ku adeta di mahîyeta nimûneyeke fiêlî ya van umdeyan (qaîdeyan) de ne, bersiva wê pirsê da:

“-Heke mirin nêzîk nebûya, bi endîşeya ku wê bibe rîyakarî min ji te re ji amelê xwe behs nedikir. Min tam çil salan li ber derîyê dilê xwe pasevanî kir. Min hewl da ku ji bilî Xuda wî ji ti kesî din re venekim. Dilê min wisa bû ku min ji Xuda pê ve kesî din nas nekir.”

Îbnû Ebbas -radîyellahû anhû- peyva “**tezekka**”ya ku di vê ayeta jorê de bûrîye, bi awayê; “gotina însanî ya **laîlaheillah e!**” tefsîr dike.[138] Lewra di tezkîyê de gava pêşî, paqijkirina dil ji kufr û şirkê ye.

Çawa kelîma tewhîdê pêşî bi **nefy**ê destpê dike. Yanî “**laîlahe**” tê gotin, hewesên nefsanî û exlaq û xuyên neçê ku adeta bûne pût ji dil têne deranîn. Piştre mirov derbasî **îsbat**ê dibe. Yanî bi gotina “**îllellah**”, ew dilê ku di rewşa nezargeha îlahî de ye, bi nûra tewhîda Ellah Teala tê tijekirin.

Şair vê rastîyê çi xweş îfade dike:

*Ji dilê xwe eğyaran derîne ta ku Heq têde tecellî bike*
*Padîşah naçe serayê heta ku xanî mamûr û ava nebe*

“*Di seraya dilê te de ji ğeyrê Xuda çi û kî hebin tevan jê derîne. Lewra heta xanî mamûr û ava nebe, padîşah teşrîf nake, rûmetê nabexşe, ew nayê serayê.*”

Di bara giringîya tezkîyê de **Îbrahîm Desûqî** -quddîse sirruh- wiha dibêje:

“-Hey kurê min! Heke tu rojên xwe bi rojîyê, şevên xwe bi nimêjê derbas bikî, heke tu xwedî alemeke hundurîna temîz bî û bi Heq re xwedî mûameleyeke xalis jî bî, dîsa zinhar ji bo xwe ez-ezîyê (şexsîyetê) îddîa neke! Zinhar ji ğurûrê re meğlûb nebe û bi xapxapokên nefsê nexape. Lewra çendîn derwêşan xwe bi dest hewesa xwe ve berdane çûne helakê.”

**Hatemê Esamm** -quddîse sirruh- jî wiha dibêje:

“Bi qesrên mûhteşem, bi bağ û bexçeyên berhemdar nexape. Cihekî ji cennetê xweştir nîn e. Lêbelê çi hatibe serê Hezretê Adem dema ew di nav xweşîyên cennetê de bû, hate serê wî. Nefsa wî xwest li wir ebedî bimîne. Ew

138. Qurtûbî, el-Camî, XX, 22.

ji fêkîyê qedeğe nêzîk bû. Bi îcaba mirada îlahî, ew bi peyabûna ji bo dinyayê hate cezaklirin.

Bi pirrbûnîya îbadet û kerametên xwe nexape. Lewra digel xwedî-bûna ji bo ev qeder keramet, digel ku îsmê ezamê Ellah -celle celalûhû- li Bel'am bin Baûra[139] hatibû hînkirin jî serencama ğemnaka ku hatî serê wî, çi qeder îbretdar e.

Tu, tu be; bi pirrbûnîya îlm û amel jî nexape. Lewra ma tu nizanî ku digel ew qeder îlm û taetê xwe jî çi hatin serê Îblîs lo?! Nebe ji wan kesên ku bi îğwaya nefsê û şeytên hatine xapandin!

Çawa Rebbê me yê ku merhemeta wî ji bendeyên wî re bêdawî ye, di ayetên pîroz de di bara şîyarbûna li hemberî hîle û xefkên şeytanî de wiha dibêje:

“**Îblîs got:** (Ya Rebbê min!) **Ez sûnd dixwim ku di hemberê ku te ez har kirime de ezê jî ji bo jirêbirina însanan li ser rêya rast a te rûnim**.”[140]

“(Îblîs) **Got: Rebbê min! Di hemberê ku te ez har kirime de ezê jî li sererdê** (gunehan) **ji wan re bixemilînim û bêşiwar ezê wan tevan har bikim!**”[141]

Nebêje; ez çûme cem abidan û zahidan û bi xwe bawer nebe. Lewra pevrebûneke rijî û ziwa bê feyde ye. Ji ber ku Salebe[142] bi bêhestbûnî çûbû sohbeta Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ew bi serencama dehşetdar dûçar bûye.

Digel ku ew ewladê pêğember bû jî dîsa kurê Hezretê Nûh xwe ji banga bavê xwe mûsteğnî dît û bi wê bedbextîyê dûçar bû. Vêca peywendîya xwînê ya di navbera wî û bavê wî yê pêğember de jî ti feydeyek nedayê. Di encamê de ew bû yek ji wan kesên ku çûne helakê.

139. Binêrin. 'Eraf, 7/175-176.
140. 'Eraf, 7/16.
141. Hicr, 15/39.
142. **Salebe**, berê ew ji mizgeftê û ji sohbetên Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- cuda nedibû. Lêbelê dema ew bû xwedî mal û milk û hezkirina dinyayê kete dilê wî, vêca bi derbasbûna zemanî re wî pêşî terka cemaetê kir, paşê heta ew ji dana zekata xwe ya ferz jî îmtîna bûbû û ew bi aqîbeteke ğemnak dûçar bûye. (Teberî, Tefsîr, XIV, 370-372; Îbnû Kesîr, Tefsîr, II, 388.)

Hevjîna Hezretê Lût jî bi sebeb unsîyet, hogirî û mehebbeta xwe ya ji kafir û fasiqan ji wê nûra hîdayetê ya li ber serê xwe bêpar ma û di nav ğefletê de di reştarîyên kufrê de noq bû, çû helakê.

Bi kurtî; heke çi qeder te palpiştên wekî îlm, amel, mal, ewlad û dostan hebin jî dîsa ji bo xilasîya xwe ya li axretê bi wan bawer nebe! Ti parekê ji van nede nefsa xwe!"

Cenabê Heq di vê ayeta pîroz de ev îfade kiriye: "**Ewên ku ji astenga nefsê bibûrin û xwe ji neçêtîyên wê paqij bikin dê rizgar bibin**." Ji vê îfadê di heman demê de ev mane dertê holê; "ewên ku nayên tezkîyekirin, yanî ewên ku nefsa xwe ji neçêtîyên wê paqij nakin, ew bi rizgarîyê nagihin."

Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de wiha dibêje:

إِنَّمَا تُنْذِرُ الَّذِينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْ بِالغَيْبِ وَأَقَامُوا الصَّلاةَ
وَمَنْ تَزَكَّى فَإِنَّمَا يَتَزَكَّى لِنَفْسِهِ وَإِلَى اللَّهِ الْمَصِيرُ.

"**Tu, bes dikarî wan mirovên ku digel ew nedîtine jî di ğeybê de ji Rebbê xwe ditirsin û nimêjê dikin, şîyar bikî. «Kî xwe paqij bike»**, **ew bes ji bo feyda xwe paqij dibe. Di dawîyê de veger bi ber Xuda ve ye**."[143]

Di ayeta pîroz de eşkere dibêje; înzar, şîyarî û tirsandina pêğemberan ya ummetên xwe di bara aqîbeta dehşetdara li pêşîya wan de, bes ewê feydê bidin wan kesan ku digel ew nedîtine jî dîsa di ğeybê de qelbên xwe bi xeşiyeta ji Xuda tije dikin, nimêj dikin û zahirên xwe bi îbadetan tezyîn kirine..

Ew mirovê ku gunehkar be, bes ew seza û webalê gunehên xwe dikişîne û di vê mijarê de ti kes nabe şirîkê wî. Ew xêrên ku hatibin kirin jî sade wê feydê bidin xwediyê xwe. Ew kesê ku xwe ji gunehan paqij kiribe jî ew di lehê xwe de paqij dibe.

"**Tezekka**"ya di ayetê de li ser xeşiyetûllah'iyê û kirina nimêjê ya bi xuşûê jî şamil tê.

Ayeta "**ji bendeyên wî bes ewên ku alim bin, bi maneya rastî ji Xuda ditirsin.**"[144] jî îfade dike ku însan bi qasî gihiştina xwe ya bi agahîya durust,

143. Fatir, 35/18.
144. Fatir, 35/28.

wê dilê wî li hemberî Xuda di nav lerzeyan de bibe. Dilê wan mirovên ku Rebbê xwe nizanin û ji wî natirsin, mirî ne. Îqaz û nesîhet bandorê li mirovên wiha nakin. Ev beyana ku di ayeta heftêyema Sûretê Yasînê de; "**da ku** (Pêğember bi Qur'anê) **mirovên** (dilên wan) **zindî şîyar bike**."[145] hatiye gotin jî vê rastîyê vedibêje. Yanî divê di batin de xeşiyet û di zahirî de jî nimêja rast û durust hebe.

Hemberê paqijbûna ji gunehan, cennet û dereceyên bilind ên wê hene. Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

"**Kî jî, bi îmanê bighîje Xudayê xwe û amelê salih jî kiribe, ha mertebeyên bilind jî sirf ji wan re ne; Bihiştên 'Ednê ne, ku di bin wan de çem diherikin û ewê her û her di wan de bimînin! Ha ev e, mukafata yê ku xwe** (ji kufr û gunehan) **paqij bigre**. "[146]

Hemberê xilasîya ji bendbûnê ya ji dîgerên Xuda re jî nîmeta cemalûllah heye. Ew nailîyeteke ji cennetê jî biwêdetir e ku ew, li wir tecellîyên cemalûllah ya Xudê Teala temaşe dikin. Ew jî, ew qeder sipehî ye ku ti peyv û tarîf nikarin wê vebêjin. Naxwe kî bi îrade û arzûya xwe bi awayekî durust berê xwe bide Xuda, ji Xuda pê ve ti hizreke wî namîne. Naskirina Xuda, yanî marîfetûllah jî piştî hate bi tezkîyekirin bi hînbûna heqîqeta nefsê destpê dike. Heqîqeta "ewê ku nefsa xwe bizane, ewê Rebbê xwe jî bizane." Hevberîya (teqabûlîya) vê maneyê dike.

Ha di roja me ya îroyîn de ku însanîyet bi pirranî ji maddê re ram bûye, rûhên wan di bin sulteya nefsanîyetê de hatine bi reşkirin, îhtiyaca me bi rêberîya zatên nûranî yên ku karîne ji îhtîrasên suflî yên nefsê mûsteğnî bimînin, hê zehftir e. Bi vê mûnasebetê, divê em li ser navê xwe parên xwe ji tewsîye û nesîhetên sultanên manewîyatê dostên Heq ên ku dilan sağ dikin û ji jîyîna îmtîsala nimûneyî ya wan ya tije îbret û hikmetê, wergirin..

Yavûz Sultan Selîm Xan ê ku bi qasî ew di plana zahirî ya dîroka neteweyî ya me de yek ji şexsîyetên zirweyî ye. Her wiha ew di alema manewîyatê de jî yek ji şexsîyetên zirweyî ye. Ev bizava wî ya ku dikare ji bo rohnîkirina rêya me bibe medar, çi qeder manedar e:

Ew ji serkeftinan bazdida, diçû serkeftinên din, dema ew ji sefera Misrê vedigere, xeber jê re hat ku çavê xelkê Îstanbûlê bi heyecan li hêvîya wî ye.

145. Yasin, 36/70.
146. Taha, 20/75-76.

Vêca digel ku ew ji bajêr nêzîk bûbû jî dîsa wî li pişta qûntarên Çamlîca'yê bêhnvedan da artêşa xwe, ew derhal nehate nav Îstanbûlê. Sultanê ku li hemberî çendîn artêşên mûezzam ğalib hatibû, ew bi tirsa ku dibe ji nefsa xwe re meğlûb bibe, ew kete hezar û yek endîşe û fikaran û ji lalayê (xoceyê) xwe Hesen Can re got:

"-Lala! Bila şev tarî bibe, bila herkes vegere mala xwe, piştre emê herin nav bajarê Îstanbûlê. Bila çepikên fanîyan, aferîn-bexşên serkeftinê û îltîfatên wê me ji nefsa me re meğlûb nekin, ranexin ser axê!.."

Paşê dema bû êvar û tarîtîyê perên xwe li ser her derê danî, ew bi dizîkahî û bi awayekî bê-alayî çû nav bajêr. Lewra ew sultanekî, li hemberî xefkên ku çêdibû îhtîşam û seltenet nefsa wî têxine wan şîyar bûye. Ev malika wî ya ku vedibêje; îrşadbûna bi nefeseke qudsî ya welîyekî, ji selteneta dinyayî bi qîmettir e, zehf meşhûr e:

*Bi bûna Padîşahê alemê pevçûneke rijî û ziwa bûye*
*Bi bûna bende ji bo welîyekî ji tevan baştir û bala bûye*

Her mûmîn, divê dem bi dem bi nefsa xwe re bikeve mûhasebeya hundurîn, divê wê bikişîne ser sîğe û raweya wê; divê ew serûberîyeke ciddî ya manewî bide wê û wezîyeta wê bixe bin kontrolê. Di îlmê rûhîyatê de ji vê re "**tefehhusa batinî**" (Mûhasebeya nefsê) tê gotin. Hema nebe nebe, dema însan ji bîst û çar saetan carekê serê xwe li ser balgehê xwe datîne, bila ew mûhasebeya wê rojê bike û xwe bikişîne ser sîğe û raweya xwe. Ewên ku vê mûhasebê ji xwe re bi adet dikin, bêşiwar ji bo wan xilasbûna ji îlletê israrkirina li ser xeta û çewtîyan, hêsantir dibe.

Bila em di vê mijarê de guhê xwe bidin van şîretên **Hezretê Îmamê Ğezalî**:

"Mûmînek, piştî nimêja xwe ya sipêdê eda bike, berî ew dest bi roja xwe bike, bila bi nefsa xwe re serbiser bimîne, bila hinek mûahede û peymanan pê re bike û bila ew û nefsa xwe li ser hinek merc û şertan li hev bikin. Çawa dema bazirganek jî di meqamê sermayê xwe teslîmkirina ji bo şirîkê xwe de be, mûahede û peymanên wiha pê re dike. Di vê navberê de ew kirina hinek şîyarîyan ji bo wî jî îhmal nake. Divê însan jî van şîyarî û şîretan li nefsa xwe bike:

«Sermayê min temenê min e. Dema temenê min here, dê sermayê min here û êdî kar û qezenc jî bi dawî dibe. Lêbelê ev roja ku destpê dike, rojeke

nû ye. Xudê Teala îro jî destûr da min, qencî li min kir. Heke wî ez mirandibama, helbet heke çendan ji bo rojeke tenê jî bûya, min xwazîya xwe pê dianî ku ew careke din min bi şûn de bişîne, ez li vir berdewam amelên salih bikim û xêrên curecur bikim. Vêga qebûl bike ku tu mirî û bi şûn de hatî vegerandin. Naxwe îro bi qet'îyet ji guneh û masîyetê nêzîk nebe û eman ha! An û gaveke tenê ya îro pûç derbas neke. Lewra her nefes û hilmek nîmeteke ku hîç ti kes nikare bihayê wê bide.

Baş zanibe ku rojek, bi şev û roja xwe bîst û çar saet e. Roja qiyametê ji bo her rojê bîst û çar qotîyên devgirtî diênin, li ber însanî datînin. Dema însan qotîyekê ji wan vedike, wek mûkafata amelên ku wî di wê saetê de kirine, nava wê ji nûrê tije dibîne, bende wê mûkafata ku Xuda dê lutf bike, dihizire û ew wisan keyfxweş dibe ku heke ev keyfxweşîya wî di navbera xelkê cehennemê de were parvekirin, wê bibe ku jana cehennemê nebihîzin.. Dema ew qotîya duduyan vedike, ji vê jî tarîtî û bêhna pîs derdikevin ku ev jî ew saet e ku wî bi îsyanê bûrandiye. Ew ji bo vê jî wisan ğemgîn dibe ku heke ev ğemgînîya wî li ser xelkê cennetê hatiba belavkirin, wan ji ber kederên xwe zewqa cennetê winda dikirin. Qotîyeke sisêyan jî tê vekirin ku nava wê bi temamî vala ye. Ev jî ew saet e ku wî ew bi xewê, yan jî bi tiştên mûbah bûrandiye. Lêbelê di wê roja ku îhtiyac bi ecra xêreke pirr hindik jî zehf tê hisskirin, hesreta wî dibe wekî hesreta wî bazirganê ku digel derfeta wî hebû qezenceke mezin bike lê wî ew winda kiriye û belkû ew hê bêhtir dişewite û bi hesreta vala bûrandina wê saetê diçingize.

Naxwe;

Ey nefsa min! Dema hê firsend di dest de ye, sindoqa xwe baş tije bike, zinhar wê vala nehêle! Tenbelîyê neke, heke na, tu yê ji dereceyên bilind bikevî xwarê!»"

Azayên bedenê jî wekî arîkarên nefsê ne. Însan, divê li gorî wezîfeyên taybetî yên wan şîretan li wan bike, divê ew ji nefsa xwe re vê bibêje; van emanetan di karên xirab de têkil neke.

**Çavê** xwe; divê ew çavên xwe ji meyzandina li heramîyan û ji nêrîna li tiştên bêfeyde û pûç ên ku qelbî mijûl dikin, asteng bike.

**Zimanê** xwe; divê ew zimanê xwe ji tiştên mezmûm ên her wekî gotegot, ğeybet, îftîra, bêbextî, derew, peyv-gerandin, pesnê xwe dan, dev-avêtina

dîgeran, şelaqî û melaqîyê biparêze ku ji van re “afatên lîsan” jî tê gotin. Her wiha divê ew tim û daîm xwe bi zikr û peyvên xêrê ve meşğûl bike.

**Mîde**ya xwe; divê ew mîdeya xwe ji xurekên heram û bi şubhe biparêze û ew xwe hîn bike ku xurekên helal jî di sewîya esğerî û hindik de bikarbîne.

Însan, di her bizava xwe de bi gellek tiştên mûbah re rûbirû ye. Terk-kirina meşğûlîyetên bêğaye jî, ya serkeftîtirîn e. Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Terk-kirina tiştên nelazim, ji başbûnîya mislimantîya însanî ye.*”[147]

Yanî divê axaftina mûmînekî durust zikr be, nêrîna wî îbret be û huşbûna wî jî tefekkur be.

Ha nefs, divê mûmîn bi telqîn û şîretên wekî van tim û daîm xwe ji ğefletê şîyar bigre.

Dema însan hesabê ji nefsa xwe dipirse jî, yek ji wan regez û unsurên ku divê hîç neyên îhmalkirin jî ev e; ew amelên xwe seh bike gelo wî ew amelên xwe ji bo Xuda kirine? Yan jî wî ew ji bo nefsê kirine? Lewra însan, dem bi dem zen dike ku amelên salih ji bo Xuda dike, haleveku dibe wî bi wan amelên salih ên xwe bizav kiribe ji bo hestên nefsanî yên xwe tetmîn bike.

❁

Qelb, di encama tezkîya nefsê de bi “selîm” dibe. Di qunağa qelbê selîm de ev hersê hal têne temaşekirin:

1- **Ne-êşandina hîç ti kesekî** ye. Dil, ji xirabîya nefsê tê parastin. Exlaqê xweş teşekkul dike.

2- **Ji ti kesekî nehatin êşandin** e. Ev jî halê mehebbetê ye. Medh û dev-avêtinên fanîyan ti ehemmîyetekê îfade nake. Çawa li hemberî ronahîya taverojê, ji rohnîkirin û reşkirinan re jî ti giringî nîn e.

Şair vê rewşê wiha îfade dike:

*Di bağê cîhanê de ey aşiq, ev e meqsûda îns û cin*
*Ne bila ti kes ji te biêşe, ne bila tu ji kesekî biêşî*

147. Tirmizî, Zuhd, 11; Îbnû Mace, Fîten, 12.

3- Dema menfîetên dinyayê û axret werin hemberî hev, mirov axretê tercîh bike û rizaya îlahî ji xwe re bike hedef.

Xulaseya van hemû tiştên ku me gotin ev e:

Li vê dinyaya ku Xudê Teala xwestiye wê bike alema îmtîhanê, têde astenga nefsê li ber her însanî danîye û însan bi vê fermanber kiriye ku bila ew wan zehmetîyên ku nefs dê wan derîne holê, têkbibe û bila ew bi awayekî serkeftane li Wî vegere. Nefs, di hukmê wasîteyekê de ye ku têde hem îstîdada ji bo xêrê heye, hem jî îstîdada ji bo şerrê heye. Ji lewma ew, hem derîyekî qezencê ye, hem jî heke mirov bi xebera wê bike ew bîra ğeyyê ye. Herçî bereketa tezkîya nefsê ye, ew qeder mûezzam e ku ew li dinyayê hîç bi tiştekî din re nayê mûqayesekirin.

**Cenabê Heq, me tevan bike ji wan kesan ku li hemberî nefsa xwe ğalib tên.**

**Amîn!**

Ew însanê ku nefsa xwe ji xirabîyan paqij kiribe, xarîqeyeke hunerî ya hunermendê mûtleq e, yanî xarîqeyeke hunerî ya Rebbê xwe ye. Lewra ew, makesa (xuyageha) hemû tecellîyên cemalî ye.

## 3. MERTEBEYÊN NEFSÊ

Hal û mertebeyên nefsê ku di esnaya terbîya manewî û tekamulê de têne mûşahedekirin, li gorî tesnîfa (sinifandina) meşhûr di heft beşan de têne mûtelaa-kirin.

### a. Nefsa Emmare

**Nefsa emmare**, ew nefsa îsyankara suflî ye ku bendeyî ji Rebbê wî dûr dike û wî ji bo kirina xirabîyan tehrîk dike, nav li wî dide. Maneya "**emmare**" ya ku bi kirina xirabîyan zehf emr û ferman dike. Tekane meqsûda nefsa ji bo vê sifetê haiz, ji tetmînkirina bêpîvan a hewa û hewesên xwe îbaret e. Ew nefs e ku ji şehwetê re bûye êsîr, bûye arîkara şeytên; bûye ketîya keyfa xwe, ketîya zewqa xwe û ketîya gunehan.

Ew bendeyê ku ji nefsa emmare ya xwe re bûbe êsîr, êdî ew nikare li hemberî wê têbikoşe, ew jê re desteber dibe û ew ji arzû, xwestek û şehwetên wê re teslîm dibe.

Di esilê xwe de nefsa emmare, li hemberî xwediyê xwe ji şeytan jî hê tehlûkedartir tê zanîn. Çawa Îbnû Etaûllah el-Îskenderî vê mijarê wiha îzah dike:

".. Tu, esil ji nefsa xwe bitirse! Ew nefsa ku li dijî te kar dike. Zêdebarî vê jî ew heta bi mirinê hîç ji xwediyê xwe cuda nabe. Halhal e ku şeytan hema hîç nebe di meha Remezanê de ji însanî cuda dibe. Lewra di Remezanê de şeytnan têne kelepçe kirin. Lêbelê digel vê jî ew weqaetên cînayetan, dizî û bêexlaqî yên ku di meha Remezanê de dewam dikin, ne ji xapxapokên şeytên in, lêbelê ew ji harbûnîyên nefsê ne."

Ev beyana Cenabê Heq, ya di vê ayeta pîroz de:

إِنَّ النَّفْسَ لأَمَّارَةٌ بِالسُّوءِ.

"**Bêşiwar nefs, bi dijwarî xirabîyê ferman dike**."[148] Di bara nefsa di vê mertebê de ye.

Li alîyê din însan li gorî cih û meqamê xwe yê di alema manewî de nefsa emmare, di nav heywanat û cenewaran de dişibihe marekî jehrdar. Bêşiwar bi teşbîheke wiha, hatiye xwestin ku bal were kişandin li ser tehlûkeyên nefsê û afetên bi fecaet ên wê.

Çawa şair **New'îzade Etaî** vê heqîqetê wiha tîne zemên:

*Exlaqê zemîm bûye mar e,*
*Şahê maran jî nefsa emmare*

"Her exlaqê xirab dişibihe marekî. Şahê van maran jî bûye nefsa emmare."

Ji lewma her mûmînê xwedî aqilê selîm, li dijî nefsa emmare ya xwe her tim di wezîyeta cîhadê de ye. Di vê cîhadê de zîyana ji her zîyanê mezintir ev e; mirov şûrê aqil û îradê bixe kalanê ğefletê, mirov nikare zîyaneke ji vê zîyanê mezintir bihizire. Lewra nefsê, ji ğefleta anî û kurtedemî ya gellek kesên ku ji bo çendîn ulwîyan bi mezher bûne, îstîfade kiriye û ew ji bo xusran û bedbextîya ebedîya wan bûye kartêker û amil. Lêbelê ew bendeyên biîxlas ên ku Xuda arîkarîya wan kiribe û ew parastibin ji vê zîyan û bedbextîyê mûstesna ne.

Çawa ev bûyera ku di navbera xanima Ezîzê Misrê Zuleyxa xatûnê û Hezretê Yûsuf -eleyhisselam- de derbas bûye, zehf îbretdar e:

Wekî ku di Qur'ana Pîroz de hatiye ragihandin Hezrertê Yûsuf -eleyhisselam- bûbû xortekî ciwan, mezin bûbû û bi sipehîtîya xwe xuya bû. Vê rewşa wî Zuleyxa ya ku ew li mala wê dima, xistibû fikar û ramanên curecur.

Cenabê Heq, di ayetên pîroz de vê bûyerê wiha dide zanîn:

"**Ew jina ku Yûsuf li mala wê bû, ji wî xwest ku ew pê re bigihe mirada xwe. Derî jî asê girtin û jê re got: «Ez ji te re dibêjim; De heydê**

148. Yûsuf, 12/53.

**were!» Lêbelê wî jî, jê re got:** «(Haşa), **Ez bi Xuda xwe diparêzim! Lewra mêrê te xwendê min e; wî qedrê min rind girt** (wî meqamekî sipehî da min). **Rastî ev e ku zalim hîç bi ser nakevin!**»"

"**Sûnd be ku jinê ji dil meyla wî kiribû, xistibû dilê xwe ku wî bidest bixe. Heke wî nîşan û şîyarîya Xudayê xwe nedîtiba, ew jî dibû ku meyla wê bike. Ha Me, her wiha kir da ku em xirabî û zinayê ji wî dûr bikin** (Me delîla xwe ji wî re şanî da). **Bêguman ew ji bendeyên me yên dilsade bû.**"[149]

Yûsuf -eleyhisselam- bi lutf û arîkarîya Xudê Teala ji arîkarîyên manewî re nail bûye û bi vî awayî ji meyla xwe dana Zuleyxa'ya ku di mewqîyê temsîlkirina nefsa emmare de bûye, xilas bûbû. Em bendeyên bêçare jî mecbûr in ku bi teqwayê berê xwe bidin Cenabê Heq û em xwe ji xirabîyên nefsa xwe û halên tehlûkedarên wê dûr bigrin.

Rebbê Mezinê me, li me ferman kiriye ku em hê di qunağa pêşîna wan de xwe ji hinek fêil û kirinan biparêzin ku wê serencama wan ğemnak be, li ser vê hikmetê hatiye avakirin. Mesela, bi şehwet meyzandina mêrekî li jineke jê re ne helal, ji ber ku ewê derî li ber zinayê veke, ew nezar hatiye qedeğekirin. Ji bo hemû fiêlên mezmûmên dîger jî rewş aynî ye.

Bi rastî ev bûyer, bi îbretên mezin tije ne. Lewra îmtîhanên dinyewî ji bo xilasîya ebedî di hukmê bedelekê de ne, gellek regez û unsurên ku ew bi zor û dijwar kirine jî li vir adeta li ser hev û din hatine bi dêzîkirin û danîn. Ev jî wiha ye:

Yûsuf -eleyhisselam- xortekî wekî melaîketekî bûye ku sipehîtîya wî ew qeder balkêş bû ku bibe çîroka li ser zimanan. Li hemberî sipehîtîya wî digel ku jinan pêçî û telîyên xwe jêdikirin jî ji ber heyran-mayîna xwe ji wî re hest bi êşa telîyên xwe nekiribûn. Heke Yûsuf -eleyhisselam- mirovekî mekroh, ne sipehî û yextiyarekî hestên şehewî yên wî kuh-bûyî bûya, ne ev îmtîhan ev qeder zor dibû, ne jî ev bûyer ev qeder îrşad-bexş dibû.

Li hemberî vê Zuleyxa jî di patika serê serwet, şohret û şehwetê de bû ku ji her tiştên din behtir nefs ji van hersê sifetan re zebûn û ketî ne. Heke Zuleyxa jî jineke yextiyar û nexweşik bûya, dîsa îmtîhana Hezretê Yûsuf jî ev qeder zor nedibû û ev bûyer jî nedibû mîsaleke ev qeder bibandor. Haleveku ew jî xort bû, bi husn û cemal bû, ew adeta pêşangeheke surdarî û cazîbeyan bû ku karibe gellek kesan ji xwe re heyran û ram bike. Zêdebarî vê Zuleyxayê

149. Yûsuf, 12/22-24.

derîyê odê jî asê girtibû. Bi vî awayî di wê dema ku dizîkahî û tenahî hê bêhtir qamçîyan li gunehan dixe û wan teşwîq dike de, wê bi arzûyeke dijwar bang li Hezretê Yûsuf kiribû jê re gotibû:

“**-Heyte lek**!” Yanî “**-De heydê were**!” Wê bi vê banga xwe ya ji bo wî hewla fiêleke mekroh kiribû. Li hemberî dîmeneke wiha ku dikare çendîn îradeyan bihelîne, jinav bibe, heta Yûsuf -eleyhisselam- jî di wezîyeteke pirr zor de mabû, Rebbê Mezinê me, bi vê beyana xwe vê rastîyê:

“**Heke nîşana** (delîl û arîkarîya) **me pê ve negihaba, wî jî meyla xwe dida wê.**”[150] îfade dike.

Ha Yûsuf -eleyhisselam- ji bo bi xapxapokên ev qeder cazîbeyên dehşetdar ên ku li pêşîya wî hatibûne raxistin, nexape, got: “Meazellah” bi vê peyvê wî li holê danîbû ku tekane care bi teqwayeke bilind xwe avêtina ber penaha Xuda ye. Ev jî şanî dide ku ji bo ev arîkarîya îlahî bikeve sefhe û qunağa bicihbûnê teqwa zerûretek e. Yanî ji bo mirov karibe li hemberî arzûyên dijwarane yên nefsa emmare li ber xwe bide, mirov dikare vê jî bes bi saya xurtkirina hestên teqwayê bidest bixe.

Bi rastî yek ji girantirîn îmtîhanên ku mêr karibe di dirêjahîya jîyana xwe de pê re rûbirû bimîne, ev e; ew karibe ji bo wê îltîfat û banga ku ji jineke xwedî her cure regez û unsurên cazîbeyên wekî ciwanî, xweşikahî û serwetê, zêdebarî vê jî ev bang û îltîfata wê di tenhatîyê de tê, bibêje; “**na**”..

Çawa Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa xwe de îfade kiriye; di wê roja dijwara qiyametê de ku ji bilî siha Erşê Xuda hîç ti siheke din nîn e Xudê Teala heft çînîyên mirovan dixe bin siha Erşê xwe. Ronahîya çavan -sellellahû eleyhî we sellem- yekî ji wan sinifên mirovan jî wiha îfade dike:

“*Ew xortê ku jineke sipehî û xwedî meqam jê re dibêje; were em pev re bibin, ew jî daxwaza wê redd dike û jê re dibêje: «Ez ji Xuda ditirsim.»*”[151]

Lewra yek ji mezintirîn lawazîyên însanî, ev e; ew ji îltîfatan re wek meğlûb, hêza mûhafezekirina xwe jidest bide. Lêbelê di Hezretê Yûsuf de ev çênebûye. Lewra bi sebeb bûna wî bi teqwa û nefsa terbîye-kirîya xwe ya di

150. Yûsuf, 12/24.
151. Buxarî, Ezan, 36.

meqamê bi kemalê gihayî de, hifza îlahî ew parast. Hifza îlahî, ew li hemberî desîseyên nefsa emmare xurt û biqewet kir.

Mijareke dîgera ji bo îbretê şayan jî ev e:

Zuleyxa gef li Hezretê Yûsuf xwaribû û jê re gotibû; heke tu bi xebera arzûyên min nekî, ezê te bixin zîndanê. Lêbelê ji ber ku nefsa paqijbûyî ya Hezretê Yûsuf -eleyhisselam- jê re teqwa îlham kiribû, wî jî li hemberî tehdîda wê gotibû:

“**Ya Rebbê min! Ji bo min zîndan, ji daxwazîya ku ew ji min dikin, hezkirîtir e**.”[152]

Ji bilî vê jî ew di penah xwestina xwe ya ji Xuda de jî dibêje:

“**Heke tu hîle û pîleyên wan ji min dûr nekî, ez dibim ji cahilên ku meyla wan dikin**.”[153] Ew ketibû wezîyeteke xirab, tekane çare ji bo xilasbûna ji wê wezîyetê jî çûna zîndanê bû, wî jî ew tercîh kir, ev ji bo wî nîşaneke mezina teqwayê bûye.

Ev jî şanî dide ku tekane ew hêza ku karibe li hemberî cazîbeyên dinyewî yên ku însanan bi ber gunehan ve dikişkişînin; nexasim li hemberî banga “**heyte lek**”[154] (**de heydê were**) berxwedanê bike, ev bû ku wî di wê demê de karî di dilê xwe de bibêje; “**meazellah**”[155] û xwe bi vê peyva “**xwe avête ber penaha Xuda**” yê xwedî qudreta bêdawî..

❀

Di Qur’ana Pîroz de tê ragihandin ku li hemberî xwe parastina ji afetên nefsa emmare, xurttirîn çek û sîlah teqwa ye. Dîsa di pirtûka mezina me Qur’ana Pîroz de weqaeteke ku heqîqeta nefsê şanî dide jî wiha ye:

Li Tûra Sîna’yê pêğembertî ji Mûsa -eleyhisselam- hate teblîğkirin û piştre jî jê re wiha hate gotin:

“«**Kopalê xwe bavêje!**..» **Çi dema Mûsa ew kopalê xwe** (yê ku avêtibû) **dît ku wekî mar be wisan dilepite, bi şûn de vegerîya, li pey xwe nemeyz-**

152. Yûsuf, 12/33.
153. Yûsuf, 12/33.
154. Yûsuf, 12/23.
155. Yûsuf, 12/23.

**and û bazda.** (Vêca) **jê re hate bangkirin, hate gotin**: **«Ya Mûsa! Were, were, netirse! Lewra tu, ji wan kesan î ku hatine ewlekirin.»**”[156]

Xudayê Ezîz û Celîl, ji Mûsa -eleyhisselam- re şîyan û qudreta xwe di wî kopalî de şanî dabû. Mûsa -eleyhisselam- jî bi wasîteya kopalê xwe hogirîya xwe û unsîyeta xwe bi qudreta Xudê Teala anî. Xudê Teala ew wek pêğember tayîn kir, ji xwe nêzîk kir û çi dema pê re axivî û hinek mûkellefîyet danê, wiha pê re axivî:

“**-Evê di destê rastê te de çi ye?**”[157]

Mûsa -eleyhisselam- jî bi vî awayî bersiva wî da, got:

“**-Ew kopalê min e. Ez birha xwe ber didim serê, ez pê pelan ji pezê xwe re diweşînim. Min têde hinek pêwîstîyên din jî hene**.”[158]

Vêca Xudê Teala jê re got:

“**-Ya Mûsa! Wî bavêje erdê**.”[159]

Hezretê Mûsa, fermana wî derhal anî cih:

“**Ew derhal avête erdê. Meyzand ku çi bibîne, ma ew ne marek e ku bilez birêve diçe?**”[160]

Mûsa -eleyhisselam- ev dît û dest bi bazdanê kir. Lêbelê

“**Xuda jê re got: «Raje wî! Netirse! Emê wî vêga li halê wî yê berê vegerînin**.»”[161]

Hinek mûfessiran di bara eşkerekirina îşaretkî ya ayeta ‘avêtina Mûsa ya kopalê xwe li ser erdê’ de gotine; ev ji bo Mûsa -eleyhisselam- îrşadeke bi alema hundurîna wî re elaqedar e.

Çi dema Mûsa -eleyhisselam- îzafe, yanî elaqeyên fanî, palpişt û êwirgeh zikr kirin, Ellah -celle celalûhû- ferman lê kir ku ew van bavêje.

156. Qeses, 28/31.
157. Taha, 20/17.
158. Taha, 20/18.
159. Taha, 20/19.
160. Taha, 20/20.
161. Taha, 20/21.

Nefs û ew tiştên bi nefsê re elaqedar, wek marekî mezin temessul kir. Heqîqeta nefsê ji Mûsa -eleyhisselam- re hate şanîdan. Ew jê tirsîya, jê bizdiha û ji berê revîya. Adeta jê re wek îşaretkî wiha hate gotin:

“-Ya Mûsa! Ha ev mar, wesfê pêbendbûna ji bilî Xuda ya bi her tiştên din bi xwe ye. Dema ev wesfê nefsanî, di awayekî şekil pêhatî-dayîn de ji xwediyê wî re hate şanîdan, ew jê dibizdihe û ji berê bazdide.

Êdî tu bi sifetê tewhîdê hatî bi sifetkirin. Ji bo te pişta xwe dana kopalekî, ji bo te hebûna tiştekî ku tu pişta xwe bidiyê, tu jê arîkarîyê bixwazî û jê îstîfade bikî, çawa rast û di cihê xwe de çêdibe?.. Çawa çêdibe ku tu bibêjî; ez bi wî kopalî wiha dikim, ez jê îstîfade dikim û ji bo min hinek pêwîstî û îhtiyacên din jî têde hene?.. Gava pêşîn di rêya tewhîdê de terkkirina sebeban e. Yanî tewekkula mûtleq û teslîmîyet e. Naxwe dev ji her cure taleb û xwestekan berde!”

Hatiye gotin:

“Ew kesê ku banga Heq bibihîze û nûra cemala wî bibîne, ewê her tiştê ku ji bilî Xuda pişta xwe didiyê, terk bike. Ew ji fedl û kerema Xuda pê ve pişta xwe nade tiştekî din. Mirov dikare bi vî awayî xwe ji arzû û desîseyên nefsê riha bike.”

❀

Dîsa nefsa emmare ye! Ewa ku dike însan, di ber lezzetên sexte yên ji bo pênc deqîqeyên alema fanîya xewnan de seadeta heqîqî û ebedî ya selteneta axretê terk bike, û her ew e, ya ku wî ji ‘ala’ya ‘îllîyyînê dixe esfela safilînê.

Însanê bi nefsa emmare malûl be, heta li pêşberî heqîqetên ku ewê ji rizgarîya wî re bikêr werin jî, ji serkêşîkirina bi înad û kibrê, ji meyzandina li mirovên derdorên xwe ya bi nezara ucbê, ji meşğûlîyetên bi derew, gotegot û malayanî adeta zewqê dibîne. Ew nikare xwe ji mekrohîyên ku bi destûra dînî hatine qedeğekirin, rizgar bibe. Ew mirovên wiha, însanên ew qeder cahil û ğafil in ku aqil, îdrak û îz‘ana wan koromoro bûne, çavên dilên wan hatine perdekirin heta ku ew karibin di ber lezzetên fanî û nefsanî yên jîyana xwe ya dinyaya kurt de cennet û cemalûllah’îyê, yanî seadet û selametîya ebedîya xwe jî terk bikin..

Di nefsa emmare de rûhê sultanî bi temamî ji rûhê heywanî re bûye êsîr, sifetê însanîyetê winda bûye û sifetê heywanî zal û serwer bûye.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de di bara kesên halo de wiha dibêje:

**“Sûnd be, me gellek ji cin û însan ji bo cehennemê aferandine. Dilên wan hene; bi wan fehm nakin; çavên wan hene; ew bi wan nabînin; û guhên wan hene; bi wan nabihîzin. Ha ew, mîna heywanan e, belku ew di sewîyekeke ji heywanan jî hê berjêtir de ne. Ha ğafilên rastî, ew bi xwe ne!”**[162]

Însanên wiha, di nav tuğyana dehşetdara ğefletê de ji awayê pêwîst hê bêhtir bi merhemeta Xuda bawer dibin, dilê xwe pê xweş dikin û li ser kirina gunehan her dewam dikin. Her wekî ku ew ji ezabê Cenabê Heq emîn û ewle bûbin, wisan di nav hizr û fikrên wiha de:

“-Can im, heke mirov heramî heram zanibe û tiştên heram bike ew mirovî nabe ser kufrê! Ji xwe ezê her rojekê tobe bikim!” ew xwe bi tesellîyên wiha pûç dixapînin û emrê xwe hewante dibûrînin.

Ha ev û hizrên wekî van di esilê xwe de pistepistên sinsî yên şeytan û nefsê ne, ku herdu dixwazin bi însanan bi awayekî hêsanî kirina gunehan bidin temînkirin û ji wan re kirina gunehan jî normal û zehf besît şanî bidin.

Haleveku şîyarî û îqaza Cenabê Heq çi qeder mezin e:

**“Gelî mirovan! Xwe ji hatina li hemberî Xudayê xwe biparêzin. Xwe ji rojeke wiha biparêzin ku ti bavek nikare ji ber zarokê xwe ve tiştekî bide û ti zarokek jî nikare ji ber bavê xwe ve tiştekî bide. Hemin peymana Xuda heq e. Zinhar bila jiyana dinyayê we nexapine û bila şeytanê xapînok jî bawerîya we bi rahma Xuda neyêne û we pê nexapîne ha!”**[163]

Li alîyê din ew kesên ku di ğefleta nefsa emmare de noq bûbin, di karên kirina xêr û hesenatên ku wê axreta wan xilas bikin de tenbel in. Ew di mijara xwe parastina ji xirabîyan de jî ğemsar û bêelaqe ne. Heke hesbe’l-qeder ew xêreke biçûçik jî bikin, wê di çavên xwe de ew qeder mezin dikin, tim û daîm wê ji xwe re dikin pesn. Heke çi qeder ew karibin ji ber xirabîyên ku ji wan sadir dibin hest bi poşmanîyeke biçûk bikin jî lêbelê ev nedamet û poşmanîya wan, ji wê qewet û ciddîyetê mehrûm e ku di hal û bizavên wan de ji bo guhertineke xêrê bibe wesîle.

162. ‘Eraf, 7/179.
163. Luqman, 31/33.

Mûmînekî di vê mertebê de wekî nexweşekî ye, îhtiyaca wî bi tedawîyê heye. Ji bo ew karibe ji nefsa emmare'ya xwe rizgar bibe û derbasî nefsa lewwame bibe, mûhîmtirîn usûla ku divê di terbîya manewî de taqîb bike jî ev e ku ew bi awayekî zehf ciddî û jidil xwe bikişîne hesabê. Divê bende, hizr pê bike ku Rebbê wî yê xwediyê ezamet û celalê her tiştî dizane. Divê ew sûalên di qebrê de, hesabê li mehşerê û ezabê dijwarê di cehennemê de bifikre û ji bo tobekirinê jî ezim bike. Lêbelê divê bende di esnaya tobê de mûnacata xwe ya bi Cenabê Heq re sade ne bi peyvê tenê, lêbelê ew bi qelbê xwe jî poşman bibe û wê bi semîmîyeteke mezin îfa bike. Heke dema ew bi serê zimanê xwe tobe dike, lêbelê dema firsenda wî çêbibe di qelbê wî de dîsa arzûya kirina wî gunehî hakim û zal be, hingê ev tobe qebûl nabe. Bi berevajî vê, ev tobeya mûnafiqa ye, heta ev tobeyeke ew qeder berbat e ku îhtiyaca wê bi xwe jî bi tobê heye. Naxwe li rexekî tobe kirin û li rexê din jî dewamkirina li ser gunehan, dibe sivik girtina wî meqamê ku bi tobê îltîca pê tê kirin û dibe tinazkirina li wî meqamî. Tobe ev e ku mirov bi rastî poşman bibe, careke din li wî gunehî nevegere û dest û dev ji xirabîyan berde û ef û meğfîreta xwe ji Cenabê Heq bixwaze.

Li alîyê din bende, ji bo ji nefsa emmare rizgar bibe, ji hindikahî ve divê ew rîayeta ehkamê şer'î yên zerûrî bike û hewl bide di rûh û heqîqeta kelîma tewhîdê de kûr bibe.. Divê bende, hemû hewa û hewesên ku di dil de adeta bi pût bûne û bendeyî ji Rebbê wî ğafil dikin ji dilê xwe bavêje. Heta dema bende hê "**laîlahe**" dibêje, divê ew her tiştê ji bilî Xuda nefî û tine bike û ew ji bilî Xuda hemû meqsûd û emancên din ji dilê xwe xîç bike, bavêje.. Piştre divê ew dilê xwe di pêgeha paqijbûyî de heqîqeta "**îllellah**" sabit bike û hewl bide ku dilê xwe sade ji Xuda bi tenê re bi taybet bike. Divê bende bi vî awayî eczîyet û hîçîtîya xwe îdrak bike û ew hewl bide ku di îmana xwe de ji teqlîdê ber bi tehqîqê ve tereqqî bike. Bi awayekî durust ji xwe re cihdîtina îmanê di dil de û têde bi qewetbûna wê jî dê berê bendeyî bidin ser amelên salih û di encamê de jî ewê bendeyî bibin, bigihînin mewqîyên bilind.

### b. Nefsa Lewwame

Ew kesên ku nefsa emmare'ya xwe bi poşmanî kişandibin ber hesabê û ji bo ji hal û bizavên mekroh û neçêtîyên wê xilas bibin jî ğeyretê şanî didin, ew ber bi nefsa lewwame ve mesafê werdigrin.

Kesên wiha, çendan bi rêjeyî be jî bi sebeb ku wan xwe ji ğefleta xapîna bi fikra; “çawa be jî Xuda efû dike” çawa ku di nefsa emmare de jî rewş wisan bû, xwerû û yekalî kirine, ew xwe bi van cure fikran tesellî nakin. Bi vê sebebê jî ew nefsa xwe şermezar dikin, ew bi poşmanî tobe û îstiğfar dikin. Ew ji ber ku bi îlmê xwe amel nekirine hest bi poşmanîyê dikin, di dîwanên îlm û îrfanê de hêstir ji çavên wan dibarin, ewên ku piştî tobe û îstiğfar dikin dîsa li heman xirabîyan vedigerin jî di nav vê çînîya mirovan de ne.

Maneya lewme-kirinê, şermezarkirin û aybdarkirin e. Nefsa lewwame ew nefs e; ji ber xirabîyên ku kirine û ji ber îhmal û qusûrên ku li hemberî ferman û qedeğeyên Xuda şanî dane jî hest bi poşmanîyê dike, wijdana wê pê diêşe, mûezzab dibe û bi vê sebebê jî bi tundî xwe şermezar dike.. Ew kesê ku di vê mertebê de be, ji hinek fiêlên di nefsa emmare de tobe kiriye û xilas bûye. Yanî wî piçekê xwe ji ğefletê selixandiye û arzûya wî ya ji bo kirina gunehan kêm bûye. Lêbelê ji ber ku ev hest baş negihane, dîsa ew bi xwe nikare û neşê xwe ji ketina gunehan rizgar bike.

Ji ber ku rûhê sultanî ji esareta rûhê heywanî xilas bûye û ji wî cuda bûye, di piştî gunehan de derhal poşmanî ji wî zahir dibe. Bende, nefsa xwe şermezar dike û îstiğfara xwe tîne. Lêbelê ji ber ku hê nefs nehatiye meğlûbkirin ew nikare di tobê de sebatkar bibe. Kesên wiha, çendan bi wijdana xwe ji xirabîyan reht û nexweşhal bibin jî ji ber ku hê dîrayeta redkirina bandorên menfî û nelê yên ku ji derve tên bipêşve neçûye û geş nebûye, ew nikarin xwe ji gunehan rizgar bikin. Mesela ji bo ew nikare dilê hevalê xwe bihêle, dikare digel wî dikeve gunehan..

Kesên wiha, bi pirranîya hesenatên ku dikin keyfxweş û mesrûr dibin û bi seyyîatên ku dikin jî ğemgîn û mehzûn dibin. Ew hewl didin xwe li hemberî harbûnîyên arzûyên şehewî yên xwe, biparêzin û li hemberî wan li ber xwe bidin. Di wan de temayulên tobekirinê bi qewet bûne. Dilên wan heta miqdarekî bi nûr bûne û ew heta bi pîvanekê ji ğefletê jî şîyar bûne.

Di kesên wiha de di pêgirîya bi fermanên Xudê Teala û bi amelên salih de pirrbûnî tê dîtin. Amelên wan bi pirranî ji bo Xuda ne. Lêbelê ji ber ku ew bi maneyeke tam bi hizûr û aramîya ku îlhamên îlahî bexş dikin, negihane, ew amelên salihên ku ew ji bo Xuda dikin ji dil û can dixwazin ku ew ji terefê xelk û alemê ve jî werin zanîn. Yanî di wan de hê jî hinek xuyên xirab ên nefsa emmare dewam dikin, lêbelê bende ji ber vî halê xwe nerfsa xwe şermezar dike.

Di Qur'ana Pîroz de navê van pêvajoyên ku nefs bi wan gihaye, ji vê ayetê tê:

وَلا أُقْسِمُ بِالنَّفْسِ اللَّوَّامَةِ.

"**Ez bi nefsa lewwame** (poşmankar) **sûnd dixwim**.."[164]

Lewmekirina însanî li nefsa xwe, yanî bi dijwarî şermezarkirina wê heke bi peyvên rijî û ziwa tenê bibe, hingê eşkere ye ku ewê wê encama ku jê tê hêvîkirin, hasil neke. Lewra di navbera mertebeyên "lewwame" û "emmare" de tixûbekî ğayet hessas û hûr heye. Heke ji ber ku însanî piçekî lewme li nefsa xwe kiribe di dilê wî de halê kibrê belî û diyar bibe, maneya vê naxwe çendan bi dizîkahî be jî hê li wir hukumranîya nefsa emmare berdewam dike.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

وَلَقَدْ خَلَقْنَا الإِنْسَانَ وَنَعْلَمُ مَا تُوَسْوِسُ بِهِ نَفْسُهُ
وَنَحْنُ أَقْرَبُ إِلَيْهِ مِنْ حَبْلِ الْوَرِيدِ.

"**Sûnd be ku me însan aferandiye; em wesweseyên ku nefsa wî didiyê jî dizanin**. (Lewra) **Em ji şahraya wî jî ji wî nêzîktir in**."[165]

Li ser vî esasî însan, dema ew lewmê li nefsa xwe dike jî divê bi guhdîkî û baldarî xwe ji desîseyên nefsa emmare û ji ğefleta xwe hisskirina di emnîyetê de îctînab bike, hay ji xwe hebe.

Lewra hinek însan, ne wek îcaba di fitretên wan de lêbelê bi meqsûda temakarîya nefsanî ya ku di bara xwe de "mûtewazî" bidin gotin, helwesteke mûtewazî şanî didin û lewmê li nefsa xwe dikin. Ev rewşa bêsemîmîyet û rîyakar di esilê xwe de ji "fexra tewazûyê"[166] îbaret û birîtî ye.

Di tobê de sebatkar bûn û xwe paqijkirina ji fiêlên xirab, bes bi terbîya manewî mûmkin e. Ew nefsa di mertebeya lewmê de, heke di bin terbîya

164. Qiyame, 75/2.
165. Qaf, 50/16.
166. **Fexra Tewazûyê**: Pesnê xwe dana bi wasîteya tewazûyê. Mesela, îfadeyên wekî; "ezê feqîr, ez nekar, bes dikarim di sê rojan de xitmekekê bixwînim" ku di nav meyla şanîdanê de têne gotin, ji vê beşê ne.

manewî de û bi salihan re bibe, hingê ewê ji fiêlên xirab were parastin. Dema ew firsendê bibîne jî dîsa li wan kirinên xirab navegere. Lêbelê di dil de hinek xuyên xirab ên her wekî kîn, hesed, kibrê dimînin.

Ji lewwamê xilasbûn û derbasbûna ji bo mûlhemê jî dîsa bi dewama li ser “rabîta”yê ku ew usûleke giringa terbîya manewî ye, çêdibe. Yanî divê ew di her hal û bizavên xwe de xwe ji heramîyan biparêze, fermanên îlahî li ber çavan bigre, wî mûrşidê kamil ê ku jê re soz daye û di terbîya manewî de ew ji xwe re rêber qebûl kiriye, bi hesta ku ew rêber ji hêla maneyî ve pê re ye, bi destê wî digre û bi hissa pevrebûnê, bizav bike.

Divê ew tim û daîm hesabê ji nefsa xwe bipirse, çi exlaqê xirab têde hebin, hewl bide her yekî ji wan bi awayekî tedrîcî û hêdî-hêdî terk bike û tobe bike. Divê ew di piştî vê de jî hewl bide xwe bi exlaqê xweş ê dijberê van xuyên xirab xwedan exlaq bibe. Mesela heke ew kesekî ji kibrê re meğlûb be, divê ew kirasê tewazû û mehwîyetê lixwe bike. Heke ew kesekî bi kîn û hesedê malûl be, divê ew birayên xwe yên mûmîn ji xwe çêtir bibîne û berî lêgerîna li qusûrên wan ew bi xeta û qusûrên xwe ve meşğûl bibe. Divê ew hizrpê bike ku mûmîn ji bo mûmînî ayneyek e, dema ew bi çavê xirab meyzîne, wê xirabîyan; lêbelê dema ew bi çavê qenc binêre, ewê sipehîtahîyan bibîne û divê ew nefsa xwe bi alîyên sipehî û baş ên bira-dînên xwe ve meşğûl bike.

Dîsa di vê mertebê de mûmîn divê li ser zikrûllah’îyê dewam bike, li hemberî masîyetê jî agahdar be û hewl bide alema dilî ya xwe jî bi nûra mehebbetûllah’îyê rohnî bike.

### c. Nefsa Mûlheme

Ew mûmînê ku ji nefsa emmare hest bi poşmanîyê bike û ji bo lewwamê terfîf û bilind bibe, di vê pêvajo û merhelê de tobe, îstiğfar û xwe parastina ji gunehan, dilê xwe dana bi îrşada manewî û bi mûcahedeyên bi hinek ji nefsê re ji bo merteba mûlheme’yê wasil dibe..

Di vê mertebê de bende, bi lutfa Xuda bi wê dîrayetê digihe ku karibe pê bi awayekî hessas xêr û şerrê ji hev biqetîne û karibe li hemberî harbûnîyên hestên şehewî yên xwe li ber xwe bide. Ew ji her tiştên ku wî ji Xuda ğafil dikin, dûr dibe. Êdî ew ji nezara li nav xelkê zehftir, bi endîşeya mewqîîyê xwe yê li cem Heq tije dibe. Heqîqetên îmanê di dilê wî de di halê înkîşafê de ne.

Bi tabîra “**mûlheme**” îfadebûna vê pêvajoya nefsê jî di Qur’ana pîroz de ji van ayetan tê:

**“Sûnd bi nefsê û ewê ku ji meqsûda aferîna wê re wek mûnasib awa û şeklê dayîyê û ficûr û teqwaya wê jê re îlham kiriye!”**[167]

Nefsa mûlheme ew nefs e ku ji îlhamê re bi mezher bûye. Ew kesên ku vê merhela nefsê dijîn, bi bereketa sipehî li ber çavên xwe girtina ferman û qedeğeyên îlahî, destpê dikin ji heqîqetên ledunnî û ji marîfet û keşfê jî piçekî nesîbdar dibin. Bende, dikeve rewşeke wisan ku bi evînîyê berê xwe dide alema rûh û bi qiwameke wisan digihe ku karibe ji terefê îlahî ve bi hinek îlhaman û bi hinek ji sirûşên Rebbanî bibe mezher. Lêbelê ji bo mirov karibe fehm bike ka ev îlham Rahmanî ne, yan jî na, bi awayekî mûtleq îhtiyac bi kontrola rêberekî manewî heye..

Lewra di vê mûcahedeya ku însan ketiyê çendan nefs di halekî meğlûb de be jî dîsa vala nasekine, ji bo rûhê sultanî ji mewqîîyê ğalib bixe, bi hîle û desîseyên nihanî li ser meşğûlkirina qelbî dewam dike. Bi vê sebebê ew mirovên ku di merteba mûlheme de bin tewekkul û teslîmîyetên wan ji Cenabê Heq re ne di maneya kamil de ne. Yanî kemalatên zahirî û fiêlî, hê di batin de tam bicih nehatiye.

Xuyên xirab û mekroh, di pirranîya caran de çendan nekevin fiîlîyatê jî lê hê jî hene. Hê ji alema sebeb û îlletên zahirî bi keş û hewaya heqîqetê nehatiye derbaskirin û bi vê sebebê jî tereddud, bedgumanî, weswese, diltengî, wehm û îhtîras bi temamî nehatine avêtin û bi aramî û dilşadîya teselîmîyetê nehatiye gihiştin. Dil, bi curecur tûla (dirêjahîya) emelan û fikarên wekî debar û îqbalê mûzderîb û îlletmend in. Digel ku ew ji bo rizqê xwe yê îro nail bûne jî lêbelê ji bo rizqê xwe yê sibê endîşe dikin. Heke çi qeder ew di zahirê de sifetê “Rezzaq”ê Cenabê Heq qebûl bikin jî belkû bêyî haya wan jê çêbibe, bi wê endîşeya ku di dilê xwe de hestpê dikin, dikarin li hemberê vî sifetê îlahî di bêîtîmadîyê de bimînin. Di vê rewşê û yên wekî vê de ji ber ku ji teqdîra Xuda re riza, teslîmîyet û tewekkul hê di dil de bi awayekî rasteqîne bicih nebûye, ew van bi awayekî teqlîdî û şeklî îfa dikin..

Dîsa di vê merhelê de mirov dikare bi awayê terkkirina tiştên ku nefs wan arzû dike û bi kirina tiştên ku nefs wan naxwaze, piçekê di terbîya nefsê de

167. Şems, 91/7-8.

serfiraz bibe. Lêbelê heke çi qeder rûhê heywanî meğlûb bûbe jî hê xuyên baş û exlaqê xweş ên ku ji rûhê sultanî tên, tam bicih nebûne.

Bi cihbûna vê, sade bi terk-kirina tiştên ku li xweşîya nefsê diçin û bi kirina tiştên ku li xweşîya wê naçin jî yanî sirf bi rîyazet û mûcahedê mûmkin nabe. Digel vê îhtiyac bi “zikrûllah” jî heye. Lêbelê heta ku dil bi endîşe û îhtîrasên dinyayî meşğûl bibe, bi sefaya zikrê û di encamê de bi îtmî’nanê nayê gihiştin. Ji bo mirov karibe zikrûllah bi rîayetkirina edebên wî îfa bike jî, îhtiyac bi rêberîya îrşada manewî ya ehlûllah heye.

Çi dema bende, ne bi meqsûda tedawî û telafîyê, lêbelê di halê zewq û lezzeteke kûr de di nav îşq û wecdê de dest bi zikrkirina Rebbê xwe bike, ew dem bi sefaya rastîna zikr tê nailkirin. Ew dem mirov bi îlhamên Rebbanî ji sirrên kaînatê waqif dibe, li wir mirov ji darêj û herkên qudreta îlahî yên ku hatine raêxistin re heyran dimîne û dilê mirovî mûtmein dibe.

Êdî bende destpê dike para xwe ji vê fermana Cenabê Heq:

ادْعُ إِلَى سَبِيلِ رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ.

“(Resûlê min!) **Bi hikmet û şîretên sipehî ji bo rêya Rebbê xwe bang bike**.”[168] werdigre, peyvên wî sipehî û bi hikmet dibin. Lewra ew, êdî dibe bendeyekî ku ji bo îlhamê bi mezher bûye.

Di vê minwalê de çi qeder mesafe were girtin jî rûhê heywanî, yanî nefs, destpê dike ew qeder ji rûhê sultanî re ram dibe û bi vê sayê jî destpê dike ji îğwaya temayulên suflî xilas dibe. Hêza wî ya mûsameha, sebr û tehemmulê zêde dibe; di tewazû, qenaet û comerdîyê de sewîyekeke bilind qezenc dike.

Lêbelê afeta vê mertebê jî xwe bi dest zena “ez bûm tiştek” ve berdane û bi ğeflet û bêagahane ber bi kibr û ucbê ve kişkişîn e. Bi vê sebebê mûmînekî di mûlhemê de, divê zanibe ku ew tim û daîm di bin mûşahedeya îlahî de ye, û hal û bizavên xwe bi hestên tewazû û fanîtîyê tayîn û dîyar bike.. Li rexê din, divê însan bi asoya dîtin-nêrînekê bigihe ku bêyî ew ji hizra axretê ğafil bibe, karibe heyata xwe ya dinyayê mûtalea bike û divê ew her tefekkura mirinê bike.

168. Nehl, 16/125.

Çawa Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*Mirinê pirr di bîra xwe bînin! Lewra di bîra xwe anîna mirinê (însanî) ji gunehan paqij dike, li hemberî dinyayê jî bi zahid dike. Heke dema hûn zengîn bin, (hûn) wê di bîra xwe bînin, (ew afetên) zengînîyê (ji we) dibe. Heke dema hûn feqîr bin, hûn wê di bîra xwe bînin, ewê (we) ji jîyana we razî bike.*"[169]

Salikekî ku nefsa wî bi vê mertebê gihabe wekî ku Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- gotî:

"*Berî hesab ji we were pirsîn, hûn hesabê ji xwe bipirsin. Berî amelên we di şehîna îlahî de werin kişandin hûn amelên xwe bikişînin. Berî hûn biçin hizûra Cenabê Heq ê ku hîç ti amelekî we jê re veşartî namîne, xwe ji wê dadgeha mezin re hazir bikin. Bêşiwar ji bo wî kesê ku hê li dinyayê hesabê ji nefsa xwe dipirse, roja qiyametê dê hesabê wî sivik bibe.*"[170] divê ew hewl bide bi mûqtezaya van nesîhetan bijî.

## d. Nefsa Mûtmeinne

Nefsa mûtmeinne, ew nefs e ku bi durustî bi xebera fermanên Cenabê Heq dike, bi titîzî xwe ji tiştên ku wî qedeğe kirine jî diparêze, bi vî awayî ew ji nexweşîyên manewî rizgar bûye, bi îmaneke heqîqî û xurt bi îtmî'nana hizûr û aramîyê gihaye. Qelb, bi bereketa zikrûllah ji şubhe û tereddudan paqij bûye û di her an û demê de jî di halê şukir û senayê de ye.

Di vê mertebê de wesfên xirab û mekroh cihê xwe ji bo exlaqê xweş hiştine. Exlaqê bilind ê Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ku ew zirweya kemala bizavan teşkîl dike û ji bo temamê beşerîyetê nimûne ye, bi zewqeke bêtarîf û bi ciwanî tê jîyînê. Dilê bendeyî, bi sebr, tewekkul, teslîmîyet û rizayê hatiye bi tackirin. Nefsa mûtmeinne, nefsa ehlê arifê billah e, nefsa ehlê teqwayê ye û nefsa ehlê yeqînê ye. Dilên mirovên wiha, daîm bi zikrê Heq ve meşğûl e. Ew bi batinê ehkamê şer'î jî waqif bûne.

**Hezretê Îmamê Rebbanî** gotiye:

"Heta bi nefsa nûtmeinne îbadetên ku hatine kirin û evdînî teqlîdî ye. Di nefsa mûtmeinne de ev ji teqlîdê bi tehqîqê werdigerin."

169. Suyûtî, Camîus-Seğîr, I, 47.
170. Tirmizî, Qiyamet, 25/2459; Îbnû Kesîr, Tefsîr, I, 27.

Di evdînîyê de bi tehqîqê bilindbûn jî, maneya wê di rêzebendîya şerîat, terîqet, heqîqet û marîfetê de gihiştina “merteba heqîqetê” ye. Ev kemalata ku pê hatiye gihiştin, di têgihiştina mesûlîyetê de jî hessasîyeteke bilind bi xwe re tîne. Wiha ye; ewên ku bi şerîatê biaqil û baliğ nebin, ji hukmên dînî mesûl nayên jimartin. Mesûlîyet bes ya biaqil û baliğa ye.

Wekî vê salikekî ku ji bo rêyekê ji rêyên tesewwufî întîsab kiribe jî heta seyr û silûka xwe temam bike, ew wek zarokekî masûm tê qebûlkirin, ew bi cîhetê qusûrên xwe yên di bara edebên terîqetê de xweş têne dîtin û jê re mûsameha tê kirin. Lewra di terîqetê de salik, dema seyr û silûka xwe temam kir, êdî ew bi “ruşd” a xwe gihayî tê jimartin. Êdî ew her wekî ku ji qusûrên xwe yên di bara şerîatê de berpirs e, aynî wisan ew ji qusûrên xwe yên di bara edebên terîqetê de jî mesûl dibe. Lêbelê ew hê ji qusûrên xwe yên di bara cîhetê “heqîqet”ê de mesûl nayê jimartin. Ev rewşa mesûl nebûna wî, dema ber bi merteba mûtmeinne ve gav bavêje bi mesûlîyetê werdigere. Lewra di mûtmeinnê de bi cîhetê “heqîqet”ê jî bi ruşdê gihaye.

Bi vê sebebê ye ku hinek tiştên di şerîatê de mûbah, di terîqetê de wekî gunehên biçûk têne qebûlkirin. Di terîqetê de gunehên biçûk jî di heqîqet û marîfetê de wekî gunehên mezin, ciddî û mûhîm têne jimartin.

Mesela di şerîatê de xwarina piştî têr xwarinê îsraf e. Di terîqetê de heta bi têr-xwarinê xwarin îsraf e. Di heqîqetê de bi qasî kîfayetê wek ji hizûra Xuda ğafil xwarin, îsraf e. Di marîfetê de jî bi îlawe li ser van tevan bêyî dîtina tecellîyên îlahî di nîmetê de xwarin, îsraf e. Lewra Cenabê Heq, di her tiştekî de ji bo hebûna xwe îşaretekê pêşkêş dike.. Di hemû mijarên din de jî rewş aynî wekî vê ye.

Ha nefsa mûtmeinne, bi tewfîq û înayeta Cenabê Heq bi heqîqet, sekînet û yeqînê[171] gihaye, ji keder û endîşeyan xilas bûye û bi hinek keşf û îlhaman jî nail bûye.

171. **Yeqîn**: Peyveke Erebî ye, agahîya binbirr û tam eşkere îfade dike. Di yeqînê de ji şubhê re cih nîn e. Qelb, di mijara heqîqeta tiştekî de tetmîn bûye. Dîsa yeqîn, ji delîlan biwêdetir diçe, bi xurtîya îmanê dîtina tam eşkere îfade dike. Quşeyrî sê cureyên yeqînê wiha dibêje:
**Îlme’l-yeqîn**: Ew agahî ye ku di bara tiştekî de pişta xwe bi xeberê dispêre.
**Ayne’l-yeqîn**: Ew agahî ye ku di bara tiştekî de bi awayê dîtinê tê bidestxistin.
**Heqqe’l-yeqîn**: Ew agahî ye ku însan bi awayê bi xwe bijî tê bidestxistin.

Di vê mertebê de perdeyên ğefletê ji ser dil rabûne. Dil, biwêdetiran û heqîqetan di merteba '**ayne'l-yeqîn** de di rewşa mûşahedê de ne. Yanî qelb, ji tereddud û gumanan hatiye bi paqijkirin, bi teslîmîyeteke durust bi îtm'înan û hizûreke tam gihaye. Bendeyekî ku bi vî halî gihayî, mûkellefîyetên dînî hem zahirê wan hem jî batinê wan wek bêtereddud qebûl dike û bi awayekî ciwan wan îfa dike, bicih tîne. Zêdebarî vê jî, ev qebûl û bawerî wisan sağlem e ku cumle (temamê) alem (ê) bibin yek, dijbera bawerîya wî îddîa bikin jî di wî de tereddudeke biçûçiktirîn jî hasil nabe. Lewra ew alema maddî û manewî êdî ji pencereya heqîqetê ve temaşe dike.

Mirovên wiha, di ber îmana xwe de hîç ji ti jan, çîle û têkoşînê natirsin. Sihêrbazên Firewn ên ku serpêhatiya wan di Qur'ana Pîroz de hatiye vegotin jî li hemberî mûcîzeyên tam eşkere yên ku ji Hezretê Mûsa -eleyhisselam- dîtin bi dilekî mûtmein îman bi Xuda anîbûn û biryardarîya xwe ya di îmana xwe de bihayê wê canê xwe dane û ew mûhafeze kirine. Wan guhê xwe hîç nedaye tehdîda Firewnê zalim ê ku ji wan re gotibû; heke hûn ji îmana xwe venegerin ezê dest û pêyên we çepûrast jêkim û ezê we li ser qurmên darqesban daleqînim jî û wan di nav heyecaneke mezina îmanê de bi arzûmendane gîyanê xwe feda kirin û gotin:

"**Ji xwe emê li Xudayê xwe vegerin. Dema ayetên Xudayê me ji me re hatin sirf ji ber ku me îman bi wan aniye, tu me aybdar dikî. Xudayê me! Sebrê bi ser me de birijîne û me misliman bimirîne**."[172]

Lewra di vî meqamî de kesafeta beşerî ya ku li ber çavan perdeyan çêdike, ji ber ku bi tine bûye û bi hestên letîf nûra heqîqetê zihûr û xuya bûye, ev xîtaba îltîfatkara îlahî ji wan re bûye nesîb:

يَا أَيَّتُهَا النَّفْسُ الْمُطْمَئِنَّةُ.

"**Ey nefsa** (îtaetkara) **ku bi îtmî'nanê gihayî!**"[173]

Wekî ku hate dîtin, nefsên ji mûtmeinnê di dereceyeke berjêrtir de bin ji îltîfata îlahî re bi layiq nebûne. Lêbelê nefsa mûtmeinne'ya ku bi îtmî'nanê gihayî û nefsên di ser vê mertebê re dikarin ji vê re bi mezher bibin. Ji bo

172. 'Eraf, 7/125-126.
173. Fecr, 89/27.

mirov karibe ji vê îltîfatê re bibe layiq jî, divê mirov cehd û ğeyreteke ciddî sarf bike û nefsa xwe jî bixe bin îtaetê.

Bendeyên bextiyar ên ku bi mûtmeinnê nail bûne, berê xwe dane ser sê mertebeyên mezin din jî ku ew wiha têne rêzkirin û ji wan re radîye, merdîye û kamîle tê gotin. Ew jî bi qasî mûweffeqîyeta xwe bi van, bi zirweya wuslet û nêzîkbûna ji Heqq digihin.

### e. Nefsa Radîye

Nefsa radîye, ew nefs e ku bi awayê daîm berê xwe dayî Heq bi hesta digel Xuda bûnê gihaye, ji hikmet û hukmê wî re wek ram ji Rebbê xwe razî û xweşnûd bûye. Bendeyê ku ji bo vê mertebê bilind bûbe, ji îradeya xwe bûrîye, di îradeya Heq de fanî û tine bûye.

ارْجِعِي إِلَى رَبِّكِ رَاضِيَةً مَرْضِيَّةً.

Hatiye eşkerekirin ku hukmê “**Tu, ji Wî wek razî**” ya di vê ayeta Qur’ana Pîroz de: “**Tu, ji Wî wek razî û Ew jî ji te razî li Rebbê xwe vegere!**”[174] vî meqamî îşaret dike.

Ev halê rizayê, li hemberî hemû îmtîhanên biêş ên ku ji Heq tên sebr şanî-dan û di vê mijarê de ji dil û can qebûlkirina îradeya wî ye. Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

**“Sûnd be ku emê we hinekî bi tirsê û birçîbûnê û bi kêmkirina mal û can û bi kêmkirina mêweyên we, îmtîhan bikin. Mizgînîyê bide sebrdaran!”**[175]

Ji bo mirov karibe bibe ji zumreya “**sebrdaran**” ya ku di vê ayeta pîroz de hatiye îfadekirin, divê mirov bi teqdîra Cenabê Heq razî be, çendan ew teqdîr wekî ku mirov hêvî dike tecellî nebe jî û divê mirov bi ti awayan li hemberî wê teqdîrê nekeve îsyanê. Ha nefsa radîye jî meqamê wan kesan e ku îradeya îlahî çi wek xêr çi jî wek şerr tecellî bibe, her ji temamê hukmên qezayê re bêtereddud teslîm dibin, rizamendîyê jê re şanî didin û bi ti awayan ji wê gileh nakin.

174. Fecr, 89/28.
175. Beqere, 2/155.

Îmtîhanên vî meqamî li gorî meqamên berîya vî hê girantir in. Lewra însan, ji hêla maneyî ve çi qeder bilind bibe îbtîla û îmtîhan jî ew qeder zêde dibin. Çawa Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî gotiye:

"*Ji navbera mirovan ewên ku ji her kesî bêhtir bi tundî têne îmtîhankirin pêğember in. Piştre jî li gorî dereceya nêzîkbûna xwe ya ji wî kesên din in. Însan bi qasî dîndarîya xwe bi îmtîhanan re rûbirû dimînin.*"[176]

Însan, bes piştî derbaskirina astenga nefsê dikare li hemberî îbtîla û meşeqqetan bi durustî sebrê şanî bide û dikare bi wê dîrayetê bigihe ku li hemberî Wî yê ew dane, razî bibe. Ev îbtîla û meşeqqet, nazî û cîlweyên rêya manewîyatê ne. Ji lewma mûkafatên mezin daîm li pey mûqawemet, sebr, sebat û tehemmulên mezin, tên.

Di nezara mûmînên di vê mertebê de ğem û sirûra heyatê yek in. Lewra ji ber ku dilê wan bi dinyayê ve nehatiye girêdan, ji bo wan keyfxweşî û kederên heyatê wekhev bûne. Xêr, yan jî şer, her çi hatibe teqdîrkirin, ew tevî ji Cenabê Heq dizanin û bi wan razî dibin.

Ev malikên li jêrê, vê rewşê çi xweş îfade dikin:

*Ya ku ji Te ji min re were xweş e,*
*Ya gul ğunçe, yan jî strî,*
*Ya tac, yan jî kefen,*
*Qehra te jî xweş e, lutfa te jî xweş e!*

Zehmetîya mezina jîyîna rastîyên di vê malikê de ku dikarin ğayet bi hêsanî werin gotin, divê baş werin fehmkirin û teqdîrkirin (qedr û qîmetê wan were zanîn). Ev peyv û yên wekî van, bes dikarin di meqamê radîye (nefsa razîbûyî) de bicih werin. Divê însan xwe bi dest wehma ez jî heme ve bernede, yan jî divê ew xwe ji terennumkirina wan peyvan ya bi wesîleya teqlîdê berî hatina wextê wan, yan jî bi bêwijdanî û bi bêperwatî bilêvkirina wan biparêze. Lewra di vê rewşê de her yek ji wan peyvan mahîyeta îddîayê hildigre ku heke Cenabê Heq bendeyê xwe îmtîhan bike ka ew di vê gotina xwe de semîmî ye, yan jî ne semîmî ye, hingê tirs heye ku gellek bende di vê rêya manewîyatê de peya bimînin!

Bendeyekî di meqamê radiye de, destpê dike li ser esrarê (sirrên) îlahî mûttellî (waqif û agahdar) dibe. Wehdeta îlahî bi maneya kamil îdrak dike û

176. Tirmizî, Zuhd, 57.

bi mûşahedekirina kemalata di alema maneyê de nail dibe. Bi mezherîyeta tecellîyên taybetî yên nav û sifetên Cenabê Heq şerefmend dibe. Şexsîyeta wî, ji bo xêrê, sipehîtî û rastîyê dibe kehnîyeke feyyaz (feyzbexş). Ew ji ferman û qedeğeyên îlahî re bi hizûr îttîba dike. Ji ber ku îbadet xalîsane û ji bo Xuda têne îfa û edakirin ew hîç însanî nawestînin. Lewra di îbadetên ku însanî diwestînin de meqsûdên wekî derbaskirina mertebeyan, yan nailbûna ji bo keşf û kerametan, yan jî mebestên wekî van hene. Heke însanek li pey hêvî û arzûyên wekî van bibe, ew bi wan hêvî û arzûyan rêya xwe bi xwe dixitimîne û bûye ku hemû emek û keda xwe pûç xerc kiriye. Dema wiha bibe jî westinek tê hisskirin ku ew zikr û fikrê bi însanî dide jibîrkirin. Ji lewma divê însan ji serê seyr û silûkê heta bi dawîya wê ji rizaya Xuda pê ve bi pey ti hêvî û arzûyeke din nekeve.

Heq Teala, ji me bendeyan ji şah-raya me jî hê nêzîktir e. Ya mûhîm em jî vê nêzîkbûna wî îdrak bikin û karibin bi nêzîkahîya Rebbê xwe nail bibin. Cenabê Heq ji bendeyên xwe razî dibe. Bes bila bendeyên wî jî di rêya wî de ğeyret bikin, bidine xwe, bila ew ji teqdîr û qezaya wî re rizayê şanî bidin, bila karibin tecellîyên îmtîhanên îlahî yên ku ji wan re mûxateb in, bi tekûzî û kemalî pêşwazî bikin û bila ji wan razî bibin.

## f. Nefsa Merdîyye

Ew mirovên ku di mertebeya radîye de dibin, ji bo karibin ji hemû feyzên vê mertebê îstîfade bikin, îcab dike ku Cenabê Heq jî ji wan razî bibe. Yanî razîbûna bendeyî ji Xuda têrê nake, ji bo tereqqîyeke tekûz divê Xuda jî ji bendeyê xwe razî bibe. Bi îfadeyeke din, razîbûna me ji Heq, divê di qiwam û sipehîtîyekê de bibe ku ji rizaya bilinda Wî re bibe mezher. Heke ev bicih were, digel ku sifetê "merdîyye" li Xuda vedigere jî lêbelê bi bereketa amelên bendeyî yên ku ji temînkirina vê re bibin medar, ev meqam ji bendeyî re jî hatiye bi îzafekirin. Li gorî vê radîye meqamê wan kesan e ku ji Xuda razî ne; merdîyye jî meqamê wan kesan e ku Xuda jî ji wan razî bûye.

Merdîyye nefsek e ku Cenabê Heq bi xwe jê razî ye, têde xuyên xirab tine bûne, xuyên ciwan û mezîyetên exlaqî û rewîştî înkîşaf bûne. Wisa ye ku têde ji ber Aferînerê wan merhemet û şefqet-kirina li aferîndeyan, mehebbeta ji wan, comerdî, efûkarî û hessasîyet bûne lezzet. Mûmînekî di vê mertebê de bi awayê sipehîtirîn nefsa xwe mûhasebe û mûraqebe dike. Di her nefesê

de keyfîyetên hebûn û şexsîyeta xwe di ber çavan re derbas dike û li hemberî hîleyên şeytanî xwe ji valabûnê diparêze.

Dîsa bendeyekî di vê mertebê de di her hal û karî de û bi hemû mewcûdîyeta xwe ji Heq re teslîm bûye. Ew bi bereketa riza şanîdana xwe ya ji bo tecellîyên qehrê yan jî lutfê yên ku ji Xuda tên, dema koça xwe bar dike û diçe alema ebedîyetê, mizgînîya rizaya îlahî jê re tê dayîn û cilên cennetê lê hatine kirin.

Wekî ku li jorê jî hatibû zikrkirin:

Hukmê "**Tu, ji Wî wek razî**" ya di vê ayeta Qur'ana Pîroz de: "**Tu, ji Wî wek razî û Ew jî ji te razî li Rebbê xwe vegere!**"[177] vê rewşê îfade dike.

Ji bilî vê jî beyana vê di ayeta 8'an ya sûretê Beyyîne de:

رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا عَنْهُ.

"..**Xuda ji wan razî bûye, ew jî ji Xuda razî bûne**.."[178] jî îfadeyeke dîtira vê heqîqetê ye.

Bendeyekî ku bi vî halî û van heqîqetan nail bûbe, êdî ew hadîsatê ji merteba "heqqe'l-yeqîn" seyr dike. Ew bi destûra Xuda dikare ji hinek sirrên ğeybî waqif bibe. Cenabê Heq, bi sebeb riza, tewekkul û teslîmîyeta wan ji bo bendeyên xwe yên wiha adeta dibe ew çavê wan yê ku pê dibînin, ew guhê wan yê ku pê dibihîzin, ew zimanê wan yê ku pê diaxivin û ew destê wan yê ku pê tiştan werdigrin... Ji halê wan, peyvên wan û exlaqê xweşê wan re hêza tesîrê îhsan dike.

Yanî ew tecellîyên kemalatê ku di meqamê nefsa radîye de temaşe dikirin vêga wan di nefsa xwe bi xwe de t'am dike û bi wan halan hevhal dibe. Xesletên wekî sebr, tewekkul, teslîmîyet û rizayê wesfên serdest ên bizavên wî ne.

Ji exlaqê mezinê pêğemberan di bara van halên sipehî de çend nimûne wiha ne:

Hezretê Yaqûb -eleyhisselam- bi sebeb mûsîbetên ku li ser hev hatibûne serê xwe bi vê gotina xwe; "**sebra cemîl li para min dikeve**."[179] eşkere dike.

177. Fecr, 89/28.
178. Beyyîne, 98/8.
179. Yûsuf, 12/18.

Hezretê Eyyûb -eleyhisselam- jî bi nexweşî û îbtîlayên wisan giran re rûbirû mabû ku ti kes nikare xwe li ber wan bigre. Xanima wî jê xwestibû, jê re gotibû; “dûa ji Rebbê xwe bike, bila dawîyê li vî halê mûzderibê te bîne.”

Eyyûb -eleyhisselam- hemberê wê wiha da, jê re got:

“-Heq Teala emrekî heştê salî bi sihhet da min. Min hê ew qeder nexweşî nekişandiye, ez şerm dikim sihhetê jê bixwazim.”

Îbrahîm -eleyhisselam- jî dema di êgir de dihate werkirin, melaîket bi hewara wî ve hatin, wî ji wan re got:

“-Kî êgir dimevirîne? Ew halê min dizane. Daxwazeke min ji we nîn e!”[180]

Di esilê xwe de ew merheleyên ku di rêya tezkîya nefsê de têne qutkirin, digel ku ji van îbaret e jî lêbelê bi îtîbara xizmetên ku ji ehlê kemalatê re têne tewdî (bi emanet) kirin, merheleyeke din jî heye ku ji wê re jî nefsa kamîle, yan jî nefsa safîye tê gotin..

## g. Nefsa Kamîle/Nefsa Safîye

Nefsa kamîle ew nefs e ku di netîca tezkîyê de hatiye paqijkirin, saf, berraq, ulwî û gihayî ye. Ew meqamek e ku sirrên marîfetê hatine tehsîlkirin û bes ji terefê Cenabê Heq ve wek wehbî hatine lutfkirin; ew dana Heq e, sirf bi xebatê nayên qezenckirin. Îhsaneke îlahî ye, li ser sirra qederê hatiye avakirin.

Ew mirovên ku bi nefsa kamîle gihabin, bi giştî ji ber xizmeta îrşadê ya ku jê re hatî tewdîkirin di heman demê de ji vî meqamî re “meqamê îrşadê” jî tê gotin. Cenabê Heq, bi mûkemmelîyeta di hal û bizavên mirovên di vî meqamî de tesîreke îqazkara ku însanan ji ğefletê şîyar dike, xelq dike, tîne meydanê. Zatên wiha, heke bi fasiqekî re hevdîtinê bikin, ji halê wî fasiqî fehm dikin, bi zimanê halê xwe dermanê nexweşîyên qelbî yên wan ji wan re didin zanîn. Fasiq, heke mohr li ser dilê wî nehatibe xistin ew tê însafê û bi poşmanî ji ğefletê şîyar dibe.

180. Binêrin. Ahmed, Zuhd, rûp. 80; Taberî, Tarîx, I, 242; Îbnû Esîr, el-Kamil, I, 99.

Qelb, ji bo xêr û şerrê û teqwa û ficûrê, yanî ji bo hêzên melaîketî û şeytanî qada mûcadelê ye. Dil, di dirêjahîya emr û temenekî temam de bi tecellîyên melaîketî û temayulên şeytanî dikeyin û lihev dikevin.

## B. QELB Û TESFÎYA WÎ

### 1. MAHÎYETA QELB

Emanc û ğaye'ya bingehîna dîn perwerdekirin û gihandina wan însanên zarîf û kûr e ku xwe ji Heq re bende îdrak û hiss dikin. Ji bo hasilbûna vê meqsûdê, bes û bes bi îfakirin û îdrak-kirina evdînîyê ya bi durustî ji Heq re bend e. Gihana însanî û ji hêla maneyî ve bi sewîyekeke bilind gihiştina wî, di alema dilî de bi qasî heyecana ulwî, lerzîna lahûtî û livîna qudsî bicih tê.

Qelb, merkeza alema me ya bedenî û rûhanî ye. Di dewamkirina jîyana bedenî de roleke wî ya navendî heye. Bi rastî di bedena însanî de bi mîlyaran şane û hucre hene. Gihandina xwîna taze bi her yekê ji wan, heke bi ezamî mûddeteke ji çar sanîyan dirêjtir jê qut bibe, ew şane/hucre dê jîyana xwe winda bike.

Qelb, ji bo jîyana bedenî wiha giring e, di heman demê de ew cewhereke manewî ye ku merkeza tehessus, qudret û qabilîyetê ya di însanî de teşkîl dike, pêktîne. Li gorî vê qelb, hem ji cîhetê uzwîyetî ve hem jî ji cîhetê manewîyatê ve sultanê hebûna însanî ye. Di wê derecê de ye ku heta mejî yê ku merkeza tefekkurê ye jî di bin tesîra hissîyata ku ji wî sadir dibe de fikr û ramanê hildiberîne. Maneya vê qelb, bi qabilîyeta xwe ya tehessusê roleke eslî dileyize ku mejî jî di navê de ew li ser hemû uzw û endaman serwer e. Destê mirovê ku heyecan girtibe dilerize, lêxistinên qelb zêde dibin. Hisên wekî merhemet, hêrs û mehebbetê ku tesîrek ji tesîrên derveyî wan dilebitîne, ber û alî-dîyarkirina wan ji bo tefekkur û îradê û di encamê de jî ji bo bizavan, rastîyek e ku ew di hemû bizavên beşerî de tê mûşahedekirin.

Qelb, bi alîyê manewî yê xwe ve pûsûlayeke heq û heqîqetê ye. Ev wezîfe, bi tayîna Cenabê Heq li wî hatiye barkirin. Lêbelê heke ew bi berevajî meqsûda aferîna xwe bi hoyandinekê dema ji vê wezîfê were bidûrkirin ew ji kişkişîna ber bi menfîtî û neçêtîyan ve xilas nabe. Di vê rewşê de ew xwedîyê xwe li dinya û axretê abad nake; lêbelê ew ji bo xwediyê xwe dibe amil û faktorekî berbadkirinê. Bi vê sebebê, peywendkirina wî ji bo tesîrên ku berê wî bidin ser emanca aferîna wî, teqwîyekirina temayulên wî yên bi ser mirada îlahî ve û bipêşvebirina wan, di terbîya beşerî de meseleyeke zehf ehemmîyetdar e.

Ji bo qelb bi lezzetên dinyayî nexape û xwediyê xwe li alema ebedî mehrûm nehêle, Cenabê Heq di ayeta pîroz de me bendeyên xwe wiha îqaz dike, dibêje:

"**Gelî mirovan! Peymana Xuda bêşiwar heq e. Naxwe zinhar bila jîyana dinyayê we nexapîne! Bila şeytanê hîlebaz jî we li hemberî Xuda nexapîne!**"[181]

Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- jî, ji bo averê nebûna însanî ji emanca esilî ya wî û pêwîstîya bi hefsarkirina însanî ya arzûyên nefsanî yên xwe, wiha îfade dike, dibêje:

"*Çermê xwe zêde xwedî neke û li pêşvebirina wî nenêre! Lewra ew qurbanek e ku di dawîyê de ewê ji axê re were dayîn. Tu, esil li xwedîkirina dilê xwe binêre! Her ew e, yê ku here, bilind bibe û şerefmend bibe.*"

"*Tiştên bi rûn û bi hinguvîn kêm bide bedena xwe. Lewra ewê ku ji pêwîstîya wê bêhtir wê xwedî bike, dikeve arzûyên nefsanî û di dawîyê de rezîl dibe û diçe.*"

"*Xurekên manewî bide rûh. Fikirîna sitewîyayî, têgihiştina hûr û xurekên rûhî pêşkêş bike û cihê ku ewê pê ve biçe, bila xurt û hêzdar pê ve biçe.*"

Luqmanê Hakîm jî kurê xwe ji ğefletê şîyar dike û van şîretan lê dike, jê re dibêje:

"*Kurê min! Dinya, deryayeke bêbinî ye. Alimên nearif û gellekê wan di vê de çûne helakê. Bila di vê deryayê de gemîya te, qelbekî bi Xuda mûtmein û îman-anîn, be. Bila xemla gemîya te jî teqwa û îbadet be. Bila bavanîya ku*

181. Fatir, 35/5.

*vê gemîyê di deryayan de dibe seyr û seferê jî tewekkul be. Hêvî heye ku bes bi vî awayî tu karibî bi rizgarîyê bigihî.*"[182]

Qelb, ji alîyekî ve merkeza bedenê ye, ji alîyê din ve jî navenda manewîyatê ye. Qelb, ji bo bedenê çi qeder pêwîst û giring be, ew ji bo jîyana rûhanî/gîyanî jî giringîyeke hê mezintir hildigre. Lêbelê ji ber ku tişta însanî dike însan ji sûretê wî bêhtir pêkhatina rûhî ya wî ye, rolê manewî yê qelb, bi her alî ve ji rolê endamî û uzwî çêtir e. Ew bi vî wesfê manewî yê xwe, û bi xêra gellek sirr û hikmên hûr ên di wî de qelb, tekane mûessir û kartêker e ku dike însan bi mane û fezîleta "însanîyet"ê bigihe.. Li ser vê hikmetê mebnî (avabûyî) ye ku îman, berî "îqrara bi zimanî" bi "tesdîqa bi qelb" peyda dibe. Caliba diqqetê ye ku li vir ji qebûlkirina bi zêhnî û fikrî zêdetir bi "tesdîq"eke qelbî kafî hatiye dîtin.

Însan cewhera kaînatê tê qebûlkirin, çawa ku ji fitretê di însanî de îstîdad û temayulên di bara xêr û şer û ulwîyat û suflîyatê de li bal hev bin, aynî wekî vê di qelb de jî ku ew cewhera însanî ye, ev îstîdad û temayulên hevdij li cem hev in.. Bi rastî qelb, bi qasî ku ji teserrufên melaîketî re vekirî ye, ew ji desttêwerdanên şeytanî re jî vekirî ye. Yek dikare bibêje; qelb, ji bo xêr û şerrê û teqwa û ficûrê, yanî ji bo hêzên melaîketî û şeytanî saha mûcadelê ye, qada têkoşînê ye. Dil, di dirêjahîya emr û temenekî temam de bi tecellîyên melaîketî û temayulên şeytanî dikeyin û lihev dikevin.

Dema wesfên melaîketî û şeytanî di qelban de bi şeklê teserrufê werin: Wesfê melaîketî halên rûhanî yên wekî îmanê, xuyên ciwan, amelên salih, şefqetkirina li aferîndeyan û bi xuşûê îfakirina îbadetan di qelban de îlqah û fetrîm dikin. Wesfê şeytanî jî halên xirabên her wekî kufrê, şubhe, exlaqê xirab, şehwetan, hewesan û hewaîyyatan di qelb de îlqah û fetrîm dikin.

Ji qelb dûrkirina şeytanî, bi xêra îbadet û zikrûllah e. Qelb bi zikrûllah bi hizûr û aramîyê digihin. Ew qelbê ku bi zikrê hizûr û aramîyê bibîne, têde bi kok berdan û sağlembûna îmanê bi bilindtirîn dereceya mûmkina îtmî'nanê terfî dibe. Anek (kurttirîn dem) tê ku qelb, wekî panjûrekê tê vekirin û ji xwediyê wî re sirrên alemên lahûtî (alema ku nayê îdrak û mûşahedekirin) û nasûtî (alema ku dikevin qada îdrak û mûşahedê) ayan û beyan dibin. Kaînat, bi hemû sirrên xwe ve dibe kitêbeke ku ji bo xwendinê hazir be.

182. Beyheqî, Kîtabu'z-Zuhd, rûp. 73.

Qelb, ji bo wesfên melaîketî û şeytanî qada pevre mûcadelekirinê ye, ew xwedî pêkhatineke dînamîk û guhêrber e ku di vê têkoşînê de kîjan teref ğalib bibe, ew dikeve sefa wî û bi wesfê wî wesfdar dibe. Qelb, di mijara îtaet û teslîmbûna ji bo îradeya beşerî de ji endamên din cuda û ferqdar e. Qelb, di meylkirina ji bo xêrê û ji bo şerrê de ji îstîdada fitrî û tesîrên navxweyî zêdetir bi tesîrên derveyî dikeve bizavê. Yanî his, ji wan xewatirên (hizrên) ku ji ber xwe ve di qelb de dizên û ji wan re "sinûhat" tê gotin bêhtir, bi sebebên derveyî ji xwe re hebûnê dibîne. Qelb bi vê taybetmendîya xwe, dişibihe wê ava ku dikeve kîjan firağê adeta şekl û rengê wê werdigre. Heke ew ji ehlê dil be, dîrayeta tercîha xwe di terefê temayulên mûsbet ên di qelb de bikartîne û bi keş û hewaya selametîyê digihe.

Cenabê Heq di ayetên pîroz de ferman dike, dibêje:

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û bi sadiqan re bibin**."[183]

"(Ya Resûlê min!) **Dema tu mirovên ku di bara ayetên me de xwe di axafinê tewşomewşo de noq dikin, bibînî, heta ew nekevin axaftineke din ji wan dûr bibe. Heke şeytan bi te bide jibîrkirin, piştî ew hate bîra te, bi civaka zaliman re nerûne**."[184]

"**Dema tu bibihîzî ku wa ye ayetên Xuda têne înkarkirin, yan jî tinaz li wan têne kirin, heta ew nekevin axaftineke din** (heta ew mijara xwe neguherînin), **bi kafiran re nerûne; heke na, hûn jî wekî wan dibin**."[185]

Îrade, di qada pevçûn û rikeberîyê de pêşî bi jevqetandina herdu koman destpê dike, mûessir û kartêkerên ku mûsbet, yan jî menfî bandorê li ser wê bikin di destpêkê de ew di tayîn, tesbît û tercîhan de tê bikaranîn. Bi vê rewşa xwe dil, bi awa-wergirtina xwe ya ku bi tesîran re rûbirû dimîne, dişibihe "gulên bayê" ku leystikeke zarokan e.. Ji xwe dema mirov bala xwe bide ser maneya peyva "**qelb**" ya di ferhengê de, mirov dibîne ku ew bi maneya "berejîkirina tiştekî, bi dijberê wî wergerandina tiştekî û guherandina şekl û reng" tê. Ev jî vê taybetmendîya qelb te'yîd dike ku ew bi navendtirîn endamê însanî ye.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de dibêje:

183. Tewbe, 9/119.
184. En'am, 6/68.
185. Nîsa, 4/140.

"*Qelb, dişibihe pirtikeke çûkekî ku li zevîyeke virt û vala ba wî ji vir dipekîne wir û ji wir jî dipekîne vir.*"[186]

Ev weqaeta ku di Esrê Seadetê de çêbûye, vê taybetmendîya "guherîn"ê ya di qelb de bi awayekî ğayet eşkere îfade dike:

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- rojekê li Henzala rast hat. Hal û xatirê wî pirsî. Henzala -radîyellahû anhû- di nav teessur û endîşeyeke mezin de jê re got:

"-Ya Siddîq! Henzala bûye mûnafiq."

Çi dema Hezretê Ebûbekr jê re got:

"-Subhanellah! Ev çi gotin e, wiha?"

Henzala -radîyellahû anhû- pê de çû, jê re got:

"-Em, dema li dîwana Hezretê Pêğember in, ew cennet û cehennemê tîne bîra me, em dikevine rewşeke wilo her wekî ku em bi çavên serê xwe wan dibînin. Lêbelê dema em ji hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dertên, em bi zar û zêçên xwe mijûl dibin û em xwe di meîşeta dinyayî ya xwe de noq dikin jî, hingê em pirranîya şîretên ku me guhdarî kiribûn, jibîr dikin. (Em wê feyz û rûhanîyeta di sohbeta wî de winda dikin.)"

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- jê re got:

"-Wellahî halê wiha di me de jî çêdibin."

Vêca herdu rabûn, hatin hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û rewşa xwe ji cenabê wî re eşkere kirin. Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî ji wan re got:

"*Ez bi wî Xudayî sûnd dixwim ku canê min di destê qudreta wî de ye, heke we halê xwe yê li cem min berdewam mûhafeze bikira û heke we karîbûya li ser zikrê daîmî bimana, dema hûn li ser nivînên xwe radizan jî dema hûn birêve diçûn jî melaîketan destê xwe didan destê we.. (Piştre sê caran got:)*

*«-Ya Henzala! Carina wilo çêdibe, çarina jî halo çêdibe!»*"[187]

186. Îbnû Mace, Mûqeddîme, 10; Ahmed bin Henbel, Mûsned, IV, 408.
187. Mûslim, Tewbe, 12.

Yanî hem bila mirov bi heqîqet û sirrên axretê tije bibe û evdînîya xwe îfa û eda bike, hem jî bila mirov ji bo dan dewamkirina jîyana dinyayî ya xwe jî bi meşğûlîyetan ve bilebike, bila ev herdu li kêleka hev bimeşin.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi vî awayî xusûsîyeta “**telwîn**”ê ya taybetmendîya ji halekî ketina halekî din ya di qelb de îzah kiriye. Yek ji hedefên serekeyî ya tesewwufê jî heta ku jê were vî halê “**telwîn**”ê yê di qelb de bi bereketa sohbet û zikrê bi halê “**temkîn**”ê (bi îstiqrara di îstîqametê de) wergerîne. Yanî tesewwuf dixwaze berê dil bide ser îstîqameta îlahî û wî li ser vê minwalê bi sabit bike. Ji navbera sehabîyan Ebûbekr -radîyellahû anhû- ji bo vî halî mîsaleke sipehî ye. Wî, bi nehejbarîya dilî ya xwe ya di bûyera Mîracê de, bêyî şanîdana ti tereddudekê bi heman awayî tesdîqkirina wî ya ji bo Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî bes dikare bi wê temkîna ku dil qezenc kirî were îzahkirin.

Çawa mûşrikan, li ser bûyera mîracê derhal dest bi ferehvanîya derewandinê kir. Emanca wan ev bû ku di dilê mûmînan de tuxmê şubhe û wesweseyan biçînin û wan ji îmana wan vegerînin. Bi vê sebebê, çawa ew çûbûne cem çendîn sehabîyan, ew hatin cem Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- û bi helwesteke tinazpêkerane jê re gotin:

“-Ma te bihîstiye, mirovê te dibêje; xebero ew hilgerîyaye, çûye asîmanan, tu ji bo vê çi dibêjî?”

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- jî di nav wecda îmaneke mezin de li ser guhên mûşrikan ev hevokên sedaqeta destanî ya xwe neqş kirin ku wan ew berê hîç nebihîstibûn û wê bedbextiya wan hê qateke din jî li ser hev şidadin, wî ji wan re got:

“**-Ew çi dibêje rast e!.. Lewra ew, bi ti awayan derew nake! Ez, ji pêşî ve îmanê bi her tiştê ku ew tîne, tînim!**”[188]

Her îğwa, weswese û teşebbusên nûnêrên şirkê bê encam man, wî ew di hêrs û qehrê de ğerq kirin û ew careke din destevala ji cemê vegerîyan.

❁

Melaîket, sirf ji xêrê re wek amade û mûsteîd hatine aferandin. Şeytan ew bûnewer û mexlûqat in ku sade ji bo îğwa û şerrê kar dikin. Însan jî di cihekî navbera van herduyan de hatine bicihkirin. Bi vê sebebê însan, divê dilê xwe

188. Îbnû Hîşam, es-Sîret, II, 31.

ji îfrat û tefrîtê mûhafeze bike, ne ew bikeve haletekî şeytanî, ne jî divê ew ji bo melaîketîyekê zorê li xwe bike ku hîç taqeta nefsa ti beşerî jê re nîn e. Divê ew mûwazene û endazê di navbera herdu alîyan de mûhafeze bike ku ew pêwîstîya fitreta wî ye..

Divê ji bo Kurê Însanî li jîyanê mûhîmtirîn wezîfeya wî û ciddîtirîn meşğûlîyeta wî amadekarîya ji bo "ji mirinê biwêdetir" be ku ew paşwexteke mûtleq û bêdawî ye. Ev jî, bi vê ve bend e ku însan heqîqeta dilê xwe bizane, wî ji xirabîyan biparêze û ji tesîrên rûhanî re peyrew bike. Lewra li dinyayê hevkêşî û selametî, li axretê jî hizûr û seadet; bi xwedîbûna ji bo qelbê selîm ve bend in. Qelbekî wiha, qelbê selîm e, yanî ew qelb e ku taybetmendîyên xwe yên fitrî û paqijîya xwe ya ku ji xulqiyeta wî tên, winda nekirine, ew li ser selametîya dînî ye. Ev heqîqeta pêkhatina fitrî û selîmî ya dil ku maneya wê ji ser lêvên mûbarek ên Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- hatine rijandin "Îslam" e. Çawa Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de gotiye:

"*Her zarokê ku diwelide, li ser fitretê (ya Îslamê) diwelide. Piştre dêbavên wî, (li gorî bawerîyên xwe) wî yan bi krîstîyan, yan bi cihû, yan jî bi mecûsî dikin*."[189] Lêbelê çi dema qelb bi tesîrên menfî û bandorên neyênî re rûbirû bimîne, ha ew dem pêkhatina selîma wî xirab dibe û eger û îhtîmal heye ku ew îstîqameta xwe winda bike.

Ew qelbên ku dem bi dem hewaya feyzdara keş û hewaya manewî teneffus dikin û bi tecellîyên rûhanî tije dibin, di wan de exlaqê xweş, amelên salih û halên manewî hasil dibin. Bende, bes bi vî awayî bi sirra "**ehsena teqwîm**"[190]a di fitreta xwe de nail dibe. Ew di meyzandina li heyber û bûyeran de kûrahîyek û fîraseteke qezenc dike ku maneya vê jî perde ji ber "**çavê dil**"[191] radibin. Ew çavên dil ên ku di ayetan de bi hebûna wan îşaret hatiye dayîn û hingê ew dikeve halekî ku maweraye (biwêdetira wêdetiran" dibîne. Hîç şubhe nîn e ku ev dîtin, ji bo heqîqetên ji qada çavên serîyan biwêdetir mijara axaftinê ye, mewzû-behs e.

Ew kesên ku ji vebûna çavê dil re amade ne, ji dil û can terbîye û îrşadbûnê arzû dikin, ji bo pêşveçûna di rêya Heq de ğeyreteke ciddî sarf dikin. Lêbelê ew kesên ku bi semîmîyet vê arzû nakin, ewên ku di arzûya gihiştina

189. Mûslim, Qeder, 22.
190. **Ehsena teqwîm**: Însanê ku di qiwameke ji her sûretan sipehîtir de hatiye aferandin.
191. Binêrin. Sûretê Hec, 22/46.

merteba yeqînê de ğafil in, guhên xwe nadin şîret û telqînên enbîya û ewlîya. Ewên ku înad dikin û tekebburê şanî didin di nav teqan û avzêmêmên zulmet û qeswetê de bi fasiq dibin. Ji bo kor û nebînên ku di rewşeke wisan de ne, ku nikarin alî û rêya ku wê herinê tayîn bikin, dilên wan biêşe jî dîsa ji wê felaketa korbûnîya manewî ya ku ew bi xwe jê re dûçar bûne, bêxeber in.

Însan, di vê alema îmtîhanê de bi ferman û qedeğeyên îlahî hatiye binbar û mûkellefkirin. Ew ne di meylkirina ji bo kirinên mûsbet tenê de lêbelê di meylkirina ji bo kirinên menfî de jî hatiye bi xwedî îrade û tercîh kirin. Bi giştî ew xişteyên mûsbet û menfî yên îstîqameta qelb in, ew diyar dikin ka ev îrade û tercîh wê bi çi awayî tezahur bibin. Ev jî heqîqeteke ew qeder eşkere ye ku ti kes nikaribe înkar bike: Qelb, di bin çendîn kartêker û mûessirên derveyî û temayulên nefsanî de dimîne. Ew dem bi dem ji emanca aferîna xwe dûr dikeve. Ew bi halekî wisan tê ku karibe îstiqbal û paşwexta ebedî ya xwediyê xwe bavêje tehlûkê.

Ew qelbên ku di otorîte û sulteya nefsanîyetê de bin; bi kufr, şirk, bêexlaqî, îhtîrasên şehewî û xuyên wesweseyî tije ne. Qelbên wiha, bi berevajî emanca aferîna xwe, li pêşberî ulwîyatan kuh bûne, îştaha wan li pêşberî suflîyatan zêde bûye. Dîsa mirovên wiha, bi tabîra Qur'anî "**bel hum edall**"[192] in, yanî ew ketine derekeyeke ji ya heywanan jî hê berjêrtir. Ew jîyana dinyaya xwe di nav serav û leylanên ğefletê de zîyan dikin. Ev cure dil, bi îllet û nexweş in, îhtiyaca wan bi tedawîyê heye.

192. Furqan, 25/44.

Bizavên me grafîka (resmê eşkerekarî yê) qelbê me pêktînin. Em li gorî med-cezîrên qelbê xwe bizavan radixin, şanî didin.

## 2. CUREYÊN QELBAN

Mirov dikare bi tesnîfa giştî qelban li gorî rewşa manewî ya wan di sê beşan de mûtalea û tesnîf bike;

**a-** Qelbên ku emanca aferîna xwe û heysîyeta xwe diparêzin,

**b-** Qelbên mirî û yên ku mohr li ser wan hatiye xistin,

**c-** Qelbên nexweş û ğafil.

### a- Qelbên Ku Ğaye'ya/Emanca Aferîna Xwe û Heysîyeta Xwe Diparêzin

Ev, ew qelb in ku bi xêra zikr, ji ğefletê şîyar bûne. Rûhanîyet li ser nefsê zal û serwer bûye, qelb, bi nûra îmanê tije bûye. Evên wiha ew kes in ku serfiraz û mûweffeq bûne ji bo mûqtezaya ayetên pîroz ên li jêrê eda bikin û bi wan amel bikin:

**"Gelî mirovên ku îman anîne! Xuda, zehf di bîra xwe bînin!"**[193]

**"Navê Rebbê xwe zikr bike! Û bi hemû hebûna xwe berê xwe bide Wî!"**[194]

**"Kesên wisa salih hene ku ne bazirganî, ne jî danûstandin wan ji bîranîna Xuda, ji kirina nimêjê û ji dana zekatê meşğûl dike. Ew ji rojeke wisa ditirsin ku têde dil û çav dilivin, ji halekî ji bo halekî din diqulibin**."[195]

---

193. Ehzab, 33/41.
194. Mûzemmil, 73/8.
195. Nûr, 24/37.

Bendeyên ku xwedî qelbekî di vê qiwamê de bin, di wan de tecellîyên navên cemalî yên Heq Teala li ser tecellîyên celalî yên navên Wî ğalib bûne. Dîsa ewên ku xwedî qelbekî wiha bin, ew kes in ku exlaqê Xuda -celle celalûhû-, exlaqê Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- û exlaqê Qur'ana Pîroz ji xwe re bi exlaq kirine û bi kemalê gihane. Ew xwediyê wan qelban e ku bi bereketa îşq, wecd û hezkirina xwe ya ji Xuda û pêğemberê wî, xwe ji temayulên nefsanî selixandine û li cem wan masîwa bihayê xwe winda kiriye. Ev cure qelb, di Qur'ana Pîroz de bi wesfên "**qelbê selîm**", "**qelbê mûnîb**" û "**qelbê mûtmein**" hatine bibîranîn. Ev qelbên ku li cem Cenabê Heq meqbûl in, bi kurtî dikarin bi vî awayî werin îzahkirin:

**Qelbê selîm**, ew qelb e ku ji temayulên nefsanî û ji tesellutên wan hatiye parastin, yan jî hatiye paqijkirin. Ew qelb e ku Ellah Teala digel fitreta paqija wî ji bendeyê xwe re îhsan kiriye û parastina wî jî ji bendeyê xwe xwestiye. Qelb, bes dikare bi usûlên tesewwufî ku jê re tezkîya nefsê û tesfîya qelb tê gotin, bi halê vê safîyeta xwe bigihe. Bende, bi xêra vê ji ğelebeta kesafetê (ji bargiranîya gunehan) rizgar dibe û bi hakimîyeta letafetê nail dibe. Di qelbekî wiha di nûra îlahî mûsteğreq (xerqbûyî) de, çawa baqek tîrêjên ku li ser mercekê dikevin bi teksîfa (himbizîya) xwe li ser nuqteyekê agirek tê hisûlê, tekasufa (himbizîya) rûhanîyetê jî hemû hewesên nefsanî û masîyetan dişewitîne û dixe xwelî. Ev hal, nailîyeta bi qelbê selîm e, ji xwe ew qelbê ku li hizûra Cenabê Heq, husna qebûlê bibîne jî qelbekî wiha ye.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Ew roj, ne mal feyde dide ne jî ewlad. Lêbelê ewên ku bi qelbê selîm** (bi qelbekî temîz) **werin cem Xuda, mûstesna ne**."[196]

Şair Beğdadli Rûhî vê nuktê wiha îfade dike:

*Ey tacir zen neke ma kî zêr û zîv ji te dixwazin*
*Di yewme la-yenfeû' de qelbê selîm dixwazin*

"*Ey bazirgan! Di roja hesabê de ku mal û ewlad jî feyde nadin, zen neke ku zêr û zîv ji te dixwazin. Lêbelê bes qelbê selîm ji te dixwazin.*"

**Qelbê mûnîb**, ew qelb e ku daîm berê wî li Heqq e. Ew halek e ku însan ji esareta peywendîyên fanî rizgar bûye û bi eşq û şewq lezzetê ji zewqên

196. Şûera, 26/88-89.

alema sermedî diçêje û dibîne. Qelb, bi heyecanên ulwî yên darêj û herkên qudreta îlahî di halê lerzê de ye.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

"**Ha ji we re cenneta ku peymana wê hatiye dayîn! Ew bes ji wan kesan re ye ku berê xwe dane Xuda, fermanên wî li ber çavan digrin, digel ku nedîtine jî ji Rahman ditirsin û bi «qelbê mûnîb»** (bi dilekî berê wî li Xuda) **tên**."[197]

**Qelbê mûtmein** jî ew qelb e ku bi hizûra îmanê ber bi kemala exlaqî ve sefa wergirtiye. Îbadet, ji teqlîdê xilas bûne, bi halê tehqîqî hatine. Qelb, bi zikrê hatiye bi nûrkirin, rûhanîyet li ser nefsê zal û hakim bûye; cewhera îmanê di qelb de ku ew merkeza hissîyatê ye, bi awayekî nehej û zehf sağlem cih ji xwe re girtiye. Qelb, bi "îmana tehqîqî" û halên "riza"yê bi hizûr, aramî, sikûn û îtmî'nanê gihaye.

Ev halê ku di vê ayetê de hatiye gotin, teheqquq kiriye.

أَلا بِذِكْرِ اللَّهِ تَطْمَئِنُّ الْقُلُوبُ.

"**Qelb, sade bi zikrê Xuda bi îtmî'nanê digihin**."[198] Ji mefhûmê mûxalif ê vê ayetê tê zanîn; ew qelbên ku ji zikrê Xuda dûr dimînin, hîç ti caran ji jan û îzdîrabên bêtetmînîyê azad nabin û ew qet bi aramî û hizûra heqîqî nagihin.

Elametê însanê ku ji bo wesfên qelbê selîm, mûnîb û mûtmein xwedî be; bi riqqetê (nezaket û ziravî) tije bûn, bi merhemet-kirina li mexlûqatan tije bûn, bi hêstirên çavan tije bûn, bi halê rizayê tije bûn, bi xizmeta ji heq û xêrê re tije bûn, bi reva ji şerrê tije bûn, bi lezkirina li nesîhet û îrşadê tije bûn û bi çêjwergirtin ji îşqa îlahî tije-bûn e..

Sermayê vê sewîya qelb, digel "dûa û îstiğfarê" xalîsane diqqet kirina li "parîyê helal" e. Parastina vî sermaye'yî jî sade bi amelê salih mûmkin e. Ji ber ku bi însan bûna xwe, bi awayekî mûtleq bêrî-bûna ji gunehan ne mûmkin e, ji ber ku guneh jî hessasîyetên qelb kêm dikin û wî ji hêla maneyî ve li hemberî heqîqetê kor û kerr dikin, naxwe ji bo qelb karibe ji tecellîyên mûsbet

197. Qaf, 50/32-33.
198. Re'ad, 13/28.

re bi mezher bibe, şert e ku mirov xwe bi dûa û îstiğfarê xalîsane ve bigre û dev ji wan bernede.. Li ser vê hikmetê hatiye avakirin ku dersên tesewwufî, bi îstiğfarê destpê dikin. Lewra wekî ku di qaîdeyê meşhûrê *Mecelle'yê* de jî hatiye îfadekirin:

"Def'a mefasidan ji celba menafî'an ewla ye." Yanî berterefkirina xirabîyan, ji celba qencîyan hê giringtir e û divê ew pêşî werin temînkirin.

Herçî parîyê helal e; ehlûllah di vê mijarê de gotine:

"Ewê ku ji helalîyê dixwe Xuda qelbê wî nûrdar dike û kehnîyên hikmetê ji qelbê wî ji bo zimanê wî dide herikandin û rijandin."

Herçî amelê salih e, ew ji bo mûhafezekirina wê sewîya ku qelb qezenckirî û di dest de wergirtina wê, temînat e, garantor e. Îltîfatên taybet ku ji Heq Teala hatine û tên, sade ji bo xwediyê qelbên wiha, mewzûbehs in.

Di ser van de jî ew qelbên zindî yên bi nûra Xuda mûcehhez hene ku ew jî qelbên pêğemberan û dostên mezin ên Xuda ne. Ji ber ku mehebbeta îlahî qelbên wan îhya kirine, bi nezareke ku dikare îltîfat were jimartin û heta bi serê çavan jî li herdu dinyayan nanêrin. Xudê Teala, pêğemberên xwe û her yek ji ulema û ewlîya ku warisên pêğemberan e, bi dozdarê "darusselam"ê[199] wezîfedar kirine da ku ew perdeyên ğefletê yên ku ber çavên dilan dinixumînin, rakin, bi teşwîqkirina însanan ji bo exlaqê xweş û îbadetên xalîsane, qelbên wan îhya bikin û wan bajone ser marîfetûllah'îyê ku ewê wan bike wasilê îllellah.

Sewîya ku hatiye xwestin salik di netîceya terbîya qelbî de pê bigihe, halê îhsanê ye ku însan bi qelbê xwe pêrebûna daîm bi Xuda re ye û bi vî awayî qezenckirina wesfê "**qelbê zindî**" ye.

## b- Qelbên Ku Mohr Li Ser Wan Hatiye Xistin û Qelbên Mirî

Qelbên ku dikevin nav vê beşê tam bi berevajî qelbên zakir û zindî, ew qelbên mirî ne, ku di bara îmanê de mohr li ser derîyên nesîbê wan hatiye xistin. Ti ferqa qelbên wiha, ji hinek mezaran nîn e ku ew koncalek ji koncalên cehennemê ne. Ev qelb, ji qelbên pêğemberan, welîyan û salihan re qelbên tam dijber in. Ji îştahên nefsanî pê ve ti daxwazeke wan nemaye, ew kesên ku xwediyê qelbên wiha bin, li dinyayê ji xilaskirina emrên xwe bi xwarin, vex-

199. **Darusselam**: cennet e.

warin û sewdayên berwext pê ve ti emancên wan nîn in. Emanca wan li jîyanê ji emancên heywanan ne bi sewîyetir e. Heta carina ji emancên heywanan jî di derekeyeke berjêrtir de ne. Cenabê Heq, di ayeta pîroz de dibêje:

"**Bêguman Ellah, yên ku îman anîne û amelên salih kirine dixe bihiştên xwe ku di bin wan de çem diherikin. Herçî ewên ku kafir bûne, li dinyayê xweş dijîn û wekî ku heywan dixwin, ew jî wisan dixwin. Cihê ku ew herinê jî agir e!**"[200]

Cenabê Heq di ayeteke din de jî wiha dibêje:

"(Resûlê min!) **Yan jî, ma ji te were ku pirrên wan heqîyê dibihîzin, yan jî fehm dikin? Bi rastî ew mîna çarpêyan e. Ji xwe ji alîyê rê ve di mertebeyeke ji çarpêyan jî hê berjêrtir de ne, hê rêşaştir in!**"[201]

Hemû failîyetên heyatî yên kesên wekî van, ku emrê wan ji bo emel û xwestekên nefsanî mûnhesir û terxankirî ye, di nav xusraneke ebedî de derbas dibe. Halên wan li axretê jî bi dehşeta facîayeke heta bi hetayê bêdawî dewam dike û diçe ku ew nakeve nava teswîrê.

Kesên wiha, ji sirrên di însan û jîyanê de û ji neqşên îbretdar ên di kaînatê de bêxeber in. Çawa ew bi xwe bi dalaletê (rêşaşîyê) dûçar bûne, aynî wisan ew ji bo kesên di bin tesîra xwe de jî -bi qasî ku ji wan were- ji bo îdlala (ji rê xistina) wan jî dibin sersebeb.

Ew, digel ku li dinyayê di nav milk û nîmetên Xuda de dijîn jî dîsa ew di nav nankorîyeke mezina wekî înkarkirina xwediyê van nîmetan û binpêkirina ferman û qedeğeyên wî de ne. Heq Teala di bara van cure mirovan de di ayetên pîroz de wiha dibêje:

"**Ma însan nabîne ku me ew ji nutfeyekê aferandiye, vêca tu dibînî ku wa ye ew** (ji Rebbê xwe re) **bûye dijminekî eşkere**."[202]

"**Ew, kerr in, lal in û kor in. Bi vê sebebê ew, ji rêya ku tê re diçin, navegerin**."[203]

"**Bizane ku tu, nikarî** (heqîyê) **bi miriyan bidî bihîstin û tu neşî doza xwe li wan kerrên ku** (li hemberî heqîqetan mohr li ser guhên wan hatine

200. Mühemmed, 47/12.
201. Furqan, 25/44.
202. Yasîn, 36/77.
203. Beqere, 2/18.

xistin û) **pişta xwe dane aliyê te û direvin jî, bidî guhdarîkirin. Tu nîn î ku koran** (ên li hemberî heqîyê nebîn û kor bûne) **ji rêşaşiya wan vegerînî, bînî ser hîdayetê, rêya rast! Lêbelê; tu dikarî doza heqîyê li yên ku ji dilûcan misliman bûne û îmanê bi ayetên me tînin, bidî guhdarîkirin**."[204]

Bi ayetan sabit e ku kesên wiha qelbên wan mohrkirî û kilîdkirî ne. Ev heqîqet bi vê ayetê hatiye eşkerekirin:

خَتَمَ اللّٰهُ عَلَى قُلُوبِهِمْ وَعَلَى سَمْعِهِمْ وَعَلَى
أَبْصَارِهِمْ غِشَاوَةٌ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ.

"**Xuda, mohr li ser qelbên wan û guhên wan xistine. Li ser çavên wan jî cure perdeyek heye. Ji wan re ezabekî mezin heye.**"[205]

Ev keyfîyet û çawanî sirr û hikmeteke îlahî ya wisa ye ku hemû însanîyetê bi tirs û xeşîyetê bilerizîne. Ji ber ku di her însanî de ji sifetên hem "hadî"(hîdayetkar) hem jî "mûdill" (averêkar-rêşaşkar) nesîb û parek heye, mirov nikare hizrpê bike ku hê dema însan li dinyayê be mohr li ser qelbê wî were xistin û bi awayekî mûtleq bi îradeya îlahî derîyê hîdayetê li berê hatibe girtin.. Lewra derîyê hîdayetê li ber Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ê ku bi emanceke menhûsa (bêoğira) wekî kuştina Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji mala xwe derketibû rê jî, li ber Wehşî yê ku Hezretê Hemza şehîd kiriye jî û heta li ber jina Ebûsufyan Hend a ku cesedê wî sehabîyê mûbarek xirab kiribû û bi hirs û kîn kezeba wî kez dikir jî, nehatibûye girtin..

Digel ku di Qur'ana Pîroz de ji wan mirovên ku mohr li ser qelbên wan hatiye xistin, behs dike jî dîsa şexs bi şexs tayînkirina van ne mûmkin e. Lewra aqîbet û serencam mechûl e. Çawa wekî ku mîsala sihêrbazên Firewn wisa ye, hinek hene ku li ser dalaletê jîyane û di dawîya temenê xwe de jî hatine ser hîdayetê, dîsa wekî ku mîsala Qarûn û Bel'am bin Baûra wisa ye, hinek jî hene ku li ser hîdayetê jîyane û di dawîyê de jî defterên wan bi xusranê hatine girtin..

204. Neml, 27/80-81.
205. Beqere, 2/7.

Li vir nuqteya ku divê diqqet lê were kirin, ev rastî ye; di Qur'ana Pîroz de ewên ku qelbên wan wek mohr li ser hatiye xistin, têne bibîranîn; bêhtir hinek ji wan kesan e ku curm û sûcên wekî "**zulim**", "**kufr**" û "**fisq**"ê kirine. Di bara însanên ku xwediyê van sifetan bin de di bîst û şeş cihên Qur'ana Pîroz de hatiye gotin: "**Xuda, wan bi hîdayetê nagihîne.**" Ji van ayetan jî diwazdeh di bara zaliman de, heşt di bara kafiran de û şeş jî di bara fasiqan de warid bûne. Lêbelê derîyê hîdayetê li ber wan bendeyên ku ji van gunehan vegerin û bi dilekî semîmî berê xwe bidin Xuda jî, vekirî ye.

Ew, ew kesên bedbext in ku hê li dinyayê bi awayê mohr li ser qelbên wan xistinê li cezayê ji her cezayî girantir hatine xistin. Zikrkirina mehrûmîyeta ji hîdayetê di piştî van hersê curman de, di bara sebebê vê mehrûmîyetê de çendan karibe seretayekî teşkîl bike jî lêbelê ji bilî hewalekirina rastîyê ji Xuda re ti çareyeke din nîn e. Bi bizavkirina ji vir, em dikarin vê encamê derxînin; divê mirov bi şanîdana hessasîyeteke hê mezintir xwe ji van hersê gunehan biparêze..

Li alîyê din, Ji bo gellek hikmetan mechûl mana qederê û bi sebeb caiz nebûna bi dûv wê ketinê, em ji kûrkirina vê nuqteyê sarfa nezarê dikin (berê xwe jê vedigerînin).

Hikmeta wê çi dibe bila bibe, rastîyeke ku înkara wê ne mûmkin jî ev e; ewên ku qelbên wan wiha mohrkirî û kilîdkirî bin, ew kes in ku derîyên wan li ber heq û xêrê hatine girtin û têkilîyên wan ji însanîyeta rastî û ji jîyana manewî hatine qutkirin.. Tekane xwediyê qudretê yê ku dikare mohr û kilîdên di qelbên wan de rake, ew Mewla'yê mezin e ku wan bi xwe ew jibîr kiriye. Cenabê Heq, di mijara şîyarkirina me bendeyên xwe ya ji ketina ğefleteke wiha de gotiye:

"**Wekî wan kesan nebin ku Xuda jibîr kirine, ji lewma Xuda jî nefsa wan bi wan daye jibîrkirin! Ha ew, ew kes in ku ji rê derketine**."[206] Ev ayet bi kirp dibêje; ew kesên ku Xuda jibîr kiribin, ji wê şiûr û îz'ana ku pê xwe bi xwe jî bibîr bînin, mehrûm dimînin.

Ev cure qelbên ku ji heqîqetê re nebîn û kor in, receteyên rizgarîyê û meşaleyên hîdayetê yên ku enbîya û ewlîya ji wan re pêşkêş kirine, ji ber ku li dijî arzûyên nefsanî û behîmî (heywanî-sewalî) yên wan e, bi îtîrazê pêşwazîyê li wan dikin, yan jî ew dikevine bedbextiya bêgane mana li hemberê wan

206. Heşr, 59/19.

recete û meşaleyan.. Ew bi telqînên xapxapokên nefsa xwe xeyala dinyayekê ava dikin ku axreta wê nîn e, ew li wir hewl didin hedana xwe bînin.

Çawa wek îcaba temayulên fitrî yên wan tarîtî li xweşîya çilêçilê diçin, ev cure mirov jî ketine bin otorîteya neyênî û neçêtîyên di şexsîyetên xwe de meknûz, ew bedbextîya sefaletên xwe seadet zen dikin û ji bo barhilgirî û hemmaltîya gewdê xwe dijîn. Dîsa şair Mehmed Akîf bi vê malika xwe:

***Ew cewher îman e ku îlahî ew, çi mezin e!***
***Dilê zengar girtî yê bêîman di singê de bar e!***

vî halî dibîrtîne. Ewên ku di teqana nefsanîyet û bêîmanîyê de teqinîne, asê mane, heke çi qeder ew bi zelzeleyên tirsnak ên dema mirinê û bi derbên agirîn ên melaîketê mirinê ji alema heqîqetê re şîyar bibin jî êdî ew nikarin ti feydekekê ji vê şîyarbûnê bikin. Lewra ji bo kurê-adem mûkellefîyet, heta bi wê an û gavê ye ku ew melaîketê mirinê li pêşberî xwe bibîne. Di piştî wê an û gavê de firsend, bi awayê ku hîç careke din bidest nekeve, zayî bûye, ji dest çûye. Veger û poşmanîya di wê demê de aynî wekî dereng-mana tesdîqa Firewn, ya di dema mirinê de û çûna wî ya sicûdê, bêfeyde ye. Êdî yên wiha, serencama wan ya piştî vê, wê hemêza agirê cehennemê be ku çi qeder ew gewdê wan didaqurpîne îştaha wê hîn bêhtir dinepixe, xwesteka wê dibe.

### c- Qelbên Ğafil û Nexweş

Ev qelb, di navbera qelbên bisihhet û mirî de di cihekî navîn û mûtewessit de ne. Halê mirovên wiha, dişibihe jîyana biêşa însanên bedena wan nexweş. Di jîyana wan ya dinyayî de ne ahengeke wan heye, ne jî di hundurê wan de hizûr û aramî heye. Nedîyarîya di alema hundurîna wan de, alema derveyî'ya wan, berdîberdan û bêahengîya di alema derveyî'ya wan de jî alema hundurîna wan di bin tesîra menfî û neyênîya xwe de dihêle. Alozîya di mejîyê wan de, ji bo hemû hal û hereketên wan sîrayet dike. Ev cure qelbên nexweş û ğafil, di girdab û gera şubhe, bêbiryarî û hevnegirtinîyê de digevizin; bi sebeb cehalet, şehwet û îhtîrasên xwe, bi vê mûbtela ne ku her dem, bi îlletên manewî yên wekî ketina bêexlaqîyên gelemperî rûbirû bimînin.

Cenabê Heq, di ayetên pîroz de di bara vê zumreyê de wiha gotiye:

“**Di qelbên wan de nexweşî heye, Xuda jî nexweşîyên wan zêde kirine. Bi sebeb derewên ku ew dibêjin, ji bo wan ezabekî ğemnak heye.**”[207]

Bi xetertirîn nexweşîyên van cure dilan, şubhe, cehalet, şehwet, îhtîras, nebûna exlaq û dilhişkî ne.

**Şubhe**; ew nexweşî ye ku însan bi awayê nedanîna li ser çiqilekî heqîqetê ji jîyaneke feyzdara rûhanîyetê mehrûm dimîne ku ev jî ji hêla maneyî ve êş, derd û sancîyên mirinê tînin dilan. Dîsa mehrûmîyeta ji îstiqrara îmanî ya ku dil tetmîn dike, daîmî wan bi nexweşîya bêaramî û bêhizûrîyê mûbtela dike.

**Cehalet**; rêyeke ew qeder ji korîtî, rebenî, ğemnakî û tarîtîyê tije ye ku însan bi îzdîrab û jana mehrûmîyeta ji heqîqetê jî nizanibe. Ev rewş, wan îstîla dike û wan di rêyekê re birêve dibe ku dawîya wan xusran û felaketa mûtleq e.

**Şehwet û îhtîras**; ew nexweşî ye ku qelb riqqet û ziravîya xwe winda dike, di encamê vê ziravî windakirinê de jî ew bêhiss dibe û dikeve bin tehekkuma arzûyên xwe yên ku têr-xwarin ji wan re nîn e. Ev harbûnîya cure bendewarîyekê ye ku dîsa tekane cihê ew têde sikûnê bibîne û qerarê wergire, axa reşa qebristanên di bin siha reşa selwîyan de ye..

**Bêexlaqî**; penceşêra manewî ya qelb e. Heke ew di wextê xwe de tedawî bibe, dê bi destûra Xuda karibe şîfayê bibîne, rehet bibe.

**Dilhişkî**; nexweşîyeke tirsnaka qelb e. Ew ji bihîstina neşweyên zarîf û letîf, ji bihîstina hestên însanî û ji bihîstina temasên narîn ên eks û şanîdêrîyên rûhanî mehrûm-bûn e. Qelbên wiha, îtaetê nas nakin, li dengê îrşadê guhdarî nakin, nalîn û feryadan nabihîzin, nizanin ka şefqet û merhemet çi ye.. Heta kevir jî ji van dilan nermtir in, germtir in û hezkirîtir in. Cenabê Heq, di Qur’ana Pîroz de vê heqîqetê wiha îfade kiriye, gotiye:

“..(Lê çi heye) **Di piştî van** (rûdanan) **de dîsa dilê we hişk û hola bû. Êdî dilên we mîna kevir e, belkû jê hê hişktir e jî. Lewra ji keviran hinekên wisan hene ku ji nav wan rûbar derdikevin. Hinekên wisan ji wan hene ku dibin duşeq, vêca av ji wan têder, diverêje. Hinek ji keviran jî hene ku ji tirsa Xuda ji hev parçe dibin, têne xwarê. Helbet Xuda ji tişta ku hûn dikin ne bêxeber e**.”[208]

207. Beqere, 2/10.
208. Beqere, 2/74.

Çawa ji vê ayeta pîroz jî tê fehmkirin; hişkbûna qelb, ji bo di bîra xwe neanîna Xuda û demeke dûv-dirêj mehrûmbûna ji unsîyet û hogirîya bi heqîqetên îlahî, encameke tabîî ye. Rebbê Mezinê me, di ayeteke dîger de jî wiha dibêje:

“**Xwelî li wan kesan be ku di bara bibîranîna Xuda de dilên wan hişk û hola bûne! Ha ew, di nava rêşaşiyeke eşkere de ne.**”[209]

Ew amelên ku bi dilên nexweş û ğafil têne kirin, qîmetê xwe yê li cem Heq winda dikin. Heta ku qelb bi nûra Heq neyên rohnîkirin, koromoro dibin û bêhiss û kirrên dibin. Ew dikevine rewşeke wisan berbat ku hezar û yek neqş û ayetên kewnî yên ku esrarên îlahî faş dikin, nabînin.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

“(Ya Hebîbê min! Ewên ku li ber te radibin) **Ma li sererdê negerîne?** (Heke ew bi nezara îbretê li sererdê gerîbûna), **qelbên wan yên ku pê bifikirîna** (hiss kiribûna), **guhên wan yên ku pê bibihîstana dibûn. Rastî ev e ku çav kor nabin; lêbelê qelbên di nav singan de kor dibin**.”[210] Bi vê eşkere dike ku nezarên îbretê ji bo qelban di mewqîîyê şîyarkerê, îhyakar de ne. Heta bi nûra qelb nemeyzîne, pencereya çavan ji ti karekî re bikêr nayê. Lewra li pişt ayneyeke hilmgirtî temaşekirina li menzarayeke saf û zelal ne mûmkin e.

Nexweşîyên biçûk ên qelb jî ku têne îhmalkirin ji bo windahîyên mezinên ku telafîya wan ne mûmkin e, û heta ji bo mirina maneyî ya qelb jî dibin sersebeb. Bi vê sebebê zerûrî ye ku qelb di nav titîzîya îmanê de were mûhafezekirin û ji îradeya Xuda re teslîm bibe. Însanekî ku bi maneyeke temam ji Heq re teslîm bûbe, ji Aferîner pê ve hîç ti hêzek nîn e ku wî sewq û îdare bike. Ev hedîsa şerîf, zerûreta mûhafezekirina qelb, çi xweş îfade dike:

أَلاَ وإِنَّ في الجسَدِ مُضغَةً إذا صلَحَت صَلَحَ الجسَدُ كُلُّهُ ،
وَإِذا فَسَدَتْ فَسدَ الجَسَدُ كُلُّهُ : أَلاَ وَهِيَ القَلْبُ.

209. Zumer, 39/22.
210. Hec, 22/46.

“*Bila xebera we jê hebe ku di însanî de perçekek goşt heye. Heke ew baş bibe, beden baş dibe; heke ew xirab bibe, hemû beden xirab dibe. Ha ew jî dil e*.”[211]

Ev dinya, qada îmtîhan û teklîfa Cenabê Heq e. Li dinyayê curecur bayên îmtîhanê tên, dikin vîzevîz û qelbê însanî di bin tesîrên curecur de digrin, wî bi vîyalî û wîyalî ve tehf didin û diajon.

Ji terefê Cenabê Heq ve dinya wek mekanê îmtîhanê hatiye dîyarkirin. Encameke tabîî ya vê jî bahozên qewimînên hevdij têde cereyan dikin û ji bo qelb wekî pelên hişk li pêşîya xwe neajon û li ber xwe nebin jî zerûrî ye ku ew ji van tesîran were mûhafezekirin. Li ser vî esasî qelb, ji cîhetê nusret û mûaweneta îlahî ya Cenabê Heq ve îcab dike ku ew ji bahorên şîrîn ên ku tên re were teslîmkirin. Ev jî bes bi îltîcakirina ji bo Xuda, bi îtaetkirina ji ferman û qedeğeyên wî re û bi teslîmîyet şanîdana ji wan re mûmkin e.

211. Buxarî, Îman, 39.

Qelb, wekî aveke zelal e. Lêbelê dema ew bi karên xirab û gunehan şîlo dibe, êdî dibe ku hîç tiştek nayê dîtin. Di vê rewşê de ji bo mirov karibe durrên manewîyatê û nûrên heqîqetê bibîne divê mirov wê avê zelal bike.

## 3. TESFÎYA QELB

Ji bo mirov karibe mezîyetên qelbên selîm, mûnîb û mûtmein mûhafeza bike, û qelbên nexweş tedawî bike û ji bo mirov bi mehrûmîyeta ebedî li serencama qelbên ku mohr li ser wan hatiye xistin, nekeve şert û mercên dîyarkirî û serekeyî ev in:

**a.** Ğiza'ya (xureka) helal

**b.** Îstiğfar û dûa

**c.** Qur'an xwendin û bi ehkamê wê bend-bûn

**d.** Bi xuşûê edakirina îbadetan

**e.** Sağ û îhyakirina şevan

**f.** Zikrûllah û mûraqebe

**g.** Berdewamkirina mehebbet û selewatên şerîf li ser pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-

**h.** Tefekkura mewtê (mirinê)

**i.** Bi salih û sadiqan re bûn

**j.** Bûna xwedî ji bo exlaqê xweş

Ev şert û mercên ku divê mirov bi ciddîyet li ser wan raweste û bi ğeyret û hewldaneke jidilane wan tetbîq bike, îcab dike ku berî her tiştî ew bi awayekî durust werin fehmkirin û giringîya wan were îdrak-kirin.

### a- Ğiza'ya (xureka) helal

Îbrahîm Desûqî -quddîse sirruh- dibêje:

"Gelî birayên min! Heta hûn heram bixwin, zen nekin ku hûnê di bara hikmet û marîfetê de tiştekî bidest bixin."

Bedena ku îbadetan eda dike û bi taetan radibe, hêz û şîyana xwe ji ğiza'ya (xureka) maddî û ğiza'ya (xureka) manewî werdigre; ev ğiza'ya ku enerjîya erênî yan jî neyênî li ser bedenê, li ser gîyan, li ser qelb û li ser îbadet û taetan didin xuyakirin. Naxwe dema ğiza û xwarin helal û xweş bin, di beden û qelb de feyz û rûhanîyetê didin xuyakirin; lêbelê dema ğiza û xwarin heram û pîs bin, ew di beden û dil de ğeflet, qesawet, laş-giranî û kirinên xwe yên din, didin xuyakirin.

Di navbera ğiza'ya (xureka) helal û amelên salih de îrtîbateke şidandî û asê mijara axaftinê ye. Di qebûla dûa'yan de jî giringîya ğiza'ya helal pirr mezin e. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, vê mijarê wiha eşkere dike, dibêje:

"*Gelî mirovan! Bêşiwar Xuda pak e, ji her tiştan mûnezzeh e (teyyîb e). Naxwe ew ji tiştê teyyîb (helal) û paqij pê ve qebûl nake. Ellah Teala fermana ku li pêğemberan kiribe ew ferman li mûmînan jî kiriye. (Di ayetên pîroz de dibêje:)*

**«Gelî pêğemberan! Ji tiştên helal bixwin û amelên salih bikin. Lewra ez bi tiştê ku hûn dikin, baş dizanim**.»[212]

**«Gelî mirovên ku îman anîne! Ji rizqê helal ê ku me daye bixwin**.»[213]

*Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- (piştî ev ayet xwendin) behsa zilamekî kir ku ji ber ew derketiye sefereke dirêj pora serê wî tevlîhev bûye, wî toz girtiye, wî destên xwe bi jorê ve rakirine, dûa dike, wiha dibêje: «Ya Rebbî, ya Rebbî!»*

"*Vêca dema xwarina vî zilamî, vexwarina wî û cilên wî ji heramîyê bin, dema wî xureka xwe bi heramîyê wergirtibe, bila dûayên wî çawa qebûl bibin?!*"[214]

212. Mûmînûn, 23/51.
213. Beqere, 2/172.
214. Mûslim, zekat, 65.

Dostên Heq, ehlê dil, ji bo înkîşafa alema dilî ya xwe titîzîyê ji van herdu xusûsîyetan re şanî didin û dibêjin:

“**Dema hûn dixwin li parîyê ku dikeve devê we û dema hûn diaxivin jî li peyva ku ji devê we dertê, diqqet bikin!**..”

Hedîsa şerîfa li jêrê jî ji me re bi awayekî zehf wecîz û ciwan eşkere dike ka di mijara helal û heramîyê de divê em çi qeder bi îhtiyat û tedbîr tevbigerin.

Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

“*Bêşiwar helal eşkere ye. Heram jî eşkere ye. Lêbelê di navbera van herduyan de hinek tiştên bişubhe hene ku (helalbûnî û herambûnîya wan tam ne eşkere ye) gellek însan wan nizanin. Naxwe ew kesê ku xwe ji tiştên bişubhe biparêze, wî dînê xwe û heysîyeta xwe parastiye. Ew kesê ku xwe ji tiştên bişubhe naparêze jî ewê bi derbasbûna zemanî re bikeve heramîyê. Aynî wekî wî şivanê ku pezê xwe li hawîrdorên pawanê dîgeran diçêrîne ku xeter heye pezê wî bikeve nav zevîyên wan. Bila xebera we jê hene ku her padîşahekî pawanekî parastî yê wî heye. Jibîr nekin ku pawanê parastî yê Xuda jî heramkirî yên wî ne.*”[215]

Ew qelbên ku di rewşa îtaetkirina ji fermana Xuda re, teslîmîyet û rizayê de bin; ew ji bo hikmet, xêr û feyzê dibin mecra û herkgeh. Bi berevajî vê ew qelb û bedenên ku xwe ji heramî û tiştên bişubhe naparêzin jî ji vî serî heta bi wî serî ji bo xirabîyan dibin êwirgeh û ew ji bo bêexlaqîyan jî dibin hêlîn.

Di bara giringîya vê titîzî û hessasîyetê de ev mîsal çi qeder îbretdar in:

Koleyekî Ebûbekrê Siddîq -radîyellahû anhû- hebû. Vî koleyî beşeke diyarkirî ji qezenca xwe dida wî, wî jî ji vê dixwar. Dîsa rojekê koleyî tiştek ji qezenca xwe jê re anî. Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- destpê kir û ji wê xwar. Vêca koleyî jê pirs kir, jê re got:

“-Ma tu dizanî eva ku tu dixwî çi ye?”

Ebûbekr -radîyellahû anhû- îzahat jê xwest û jê re got:

“- (Na, ez nizanim) çi ye, tu ji min re bibêje?”

Çi dema koleyî jê re got:

215. Buxarî, Îman, 39.

"-Digel ku min ji fal-vekirinê fehm nedikir jî min di serdema cahilîyetê de falgîrî kir, min zilamek xapand. Ez îro li wî rast hatim. Di hemberê wî karê ku min jê re kirî de wî ev xwarina ku min ji we re îkram-kirî, da min." Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- telîya xwe xiste qirika xwe (digel hemû ezîyeta wê jî) wî çi xwaribe, hemû jê derxist."[216]

Li gorî rîwayeteke din de dema kole jê re got:

"-Ma ji bo parîyekî hêja bû ev qeder ezîyet?" Hezretê Ebûbekrê Siddîq -radîyellahû anhû- jî ev bersiv dayê, jê re got:

"-Heke ez zanibim ku wê canê min jî derkeve dîsa min ew parî derdixist."[217]

Dema Xizir -eleyhisselam- ji dostên meşhûr ê Heq **Ebdûlxaliq Gucdevanî** -quddîse sirruh- zîyaret dikir, ev axaftina ku di navbera wan de derbas bûye, pirr îbretdar e:

Xizir -eleyhisselam- ji xwarinên ku Hezretê Gucdevanî jê re îkram dike, naxwe û xwe ji ser sifrê dide paş. Hezretê Ebdûlxaliq Gucdevanî -quddîse sirruh- bi heyret jê re dibêje:

"-Ev luqmeyên helal in; tu çima naxwî?"

Xizir -eleyhisselam- vê bersivê didiyê:

"-Erê, luqmeyên helal in; lêbelê yê ku ew pijandine, bi hêrs û ğeflet ew pijandin."

Wekî ku di vê sohbetê de hate dîtin, tê fehmkirin ku; ji helalbûnî û helal-nebûnîya xwarina ku tê xwarin biwêdetir, heta bi kîjan halî ew hatiye pijandin jî bandorê li ser rûhanîyeta hal, hereket, mûamelat û îbadetên însanî, dikin. Ev rewş, giringî û nezaketa helwesta ku divê li hemberî xurekan were wergirtin, li holê datîne.

Ev hessasîyetên mirovên salih di bara xurekan de ew ajotine ser vê ku dema ji çarçî û bazaran maddeyên ğiza û xurekan wergirin, wan bi awayekî girtî, di kîs û poşêtên dev û reng-girtî de hilgirin û wisan bibin mala xwe. Lewra divê li ser xurek û ğiza'ya ku hatibe kirrîn "çavên pêvemayî" nemînin û divê di enerjî û hêza ku ji xurekan tê hêvîkirin de dilbijênîyên hundurînên

216. Buxarî, Menaqîbu'l-Ensar, 26.
217. Ahmed bin Ebdûllah et-Taberî, er-Rîyadu'n-Nadra, II, 140-141.

xwedî îhtiyacan û bandorên xirab ên nezarên mehzûnên ğerîb û mehrûman li ser wan xurekan nebin.

Çawa divê mûmîn, xwe bi titîzî ji tiştên heram û bişubhe biparêze, aynî wisan dema ew nîmet û ajarên helal bikartîne jî divê ew hevkêşîya teserrufê jî baş mûhafeza bike û ew xwe ji îsrafê vede.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

“**Û Mafê xizm, xizan û rêwiyan bide! Li cihê nepêdivî jî destbelaviyê neke! Lewra, destbelavên wiha deste-birayên şeytanan e. Şeytan jî ji Xudayê xwe re pirr nankor bûye**.”[218]

**Hezretê Mewlana** bi uslûbeke mecazî di *Mesnewî*’ya xwe de tesîra luqmeya helal li ser rûh û bedenê wiha îfade dike, dibêje:

“*Doh bi şev îlhamê, bi cureyeke cuda tecellî kir. Lewra çend luqmeyên bişubhe ku çûbûne mîdeya me, rêya îlhamê xitimandin.*

*Ğizayên bişubhe ku nefs wan arzû dike, wekî wan strîyan e ku te ji rêya Heq vedigerînin û di lingên te re diçin. Ji lewma ewên ku li luqmeyan diqqet nakin, bûne ji îsyankaran.*

*Hey bedenê! Di nava te de guleke wisan xweşik heye ku tu wê biparêzî, ji wan bêhnên xweş ên ku li hawîrdoran belav dibin, bêhijmar gulistanên îrfan û marîfetê têne meydanê*.”

**Ebdûlqadirê Geylanî** -quddîse sirruh- jî wiha balê dikişîne ser giringîya luqmê di tesfîya qelb de:

“Kurê min, binêre! Xwarina Heramîyê, qelbî dikuje. Luqme heye ku qelbê te rohnî dike; luqme heye ku wî di tarîtîyê de dixeniqîne. Dîsa luqme heye ku te bi dinyayê ve meşğûl dike; luqme jî heye ku te bi ûqbayê (axretê) ve meşğûl dike. Luqme heye ku te di herdu dinyayan de dike zahid; luqme heye ku berê te dide Xaliqê dinya û axreta te. Xwarina Heramîyê, te bi dinyayê ve meşğûl dike û masîyetan (gunehkarîyan) jî ji te re hezkirî (û xweşik) şanî dide. Xwarina xwarinên mûbah, te bi axretê ve meşğûl dike û taetan bi te dide hezkirin. Xwarina helalîyê jî dilê te ji Mewla nêzîk dike. Keyfîyeta xwarinan û bandora wan jî dikarin bes bi marîfetûllah’îyê werin zanîn. Marîfetûllah jî di dil de dibe, ne di pirtûk û defteran de. Marîfeta îlahî ji Xaliq ji bo qelb tê

218. İsra, 17/26-27.

îhsankirin; ne ji mexlûqatan. Ev jî piştî însan tewhîda îlahî tesdîq dike û bi ehkamê îlahî amel dike, teheqquq dike.

**Îbrahîm Desûqî** -quddîse sirruh- jî dibêje:

“Gelî birayên min! Heta hûn heramîyê bixwin, zen nekin ku hûn di bara hikmet û marîfetê de tiştekî bidest bixin.”

Dîsa di bara xwarina helal de ev axaftina ku di navbera Ûbeydûllah Ehrar -quddîse sirruh- û Seyyîd Qasimê Tebrîzî -quddîse sirruh- de derbas bûye, çi qeder balkêş e:

Hezretê Ûbeydûllah Ehrar vedibêje:

Rojekê Hezretê Seyyîd Qasim ji min re got:

“-Bavo! Tu dizanî ka di zemanê me de hikmet û heqîqet çima hindik xuya û zahir dibin? Lewra di vê dewrê de tesfîya batin di însanê zehf hindik de maye. Kemal, di tesfîya batin de ye. Tesfîya batin jî bi xwarina luqmeya helal mûmkin e. Di vê dewrê de luqmeya helal zehf hindik e. Însanê ku tesfîya batin kiribe jî hema bibêje tiştekî wekî ku nîn e.. Tu dê çawa bixwazî ku di mirovên wiha de esrarên (raz û sirrên) îlahî tecellî bikin?”

## b- Îstiğfar û Dûa

> “(Ya Resûlê min!) **Bibêje: Piştî ku dûa û niyazên we nebin, bila Rebbê te çima qîmet bide we?..**” [219]

Di serî de jî pêğemberan, hemû welîyan, salihan û sadiqan di tengasî û ferahîyê de û di keder û keyfxweşîyê de daîm xwe avêtine ber penaha Cenabê Heqq û daîm nîyaz ji wî kirine. Lewra di pêğemberan de ji ber ku “zelle”[220] hene naxwe hîç ti bendeyekî din nayê tesewwurkirin ku hebe û ew ji dûa û îstiğfaran mûsteğnî bimîne. Dûa û îstiğfar, bi mahîyeta rastîna xwe, ji ber ku nedameteke/poşmanîyeke derûnî û maneya îltîcayê dihewîne, bi tesîrtirîn wasîteya qurbîyyeta (nêzîkbûnîya) ji Xuda ye. Hikmeteke îfadebûna nimêjê di Erebî de bi peyva “selat”ê ku ew bi maneya dûa ye jî, ji ber vê ye ku ew di mahîyeta dûa û nîyazeke bişamiltirîn de ye.

219. Furqan, 25/77.
220. **Zelle**: Xeta’ya bêhemdî, bi ğeyrê îradî

Li alîyê din serê dûa'yan îstiğfar e. Ji Xudê Teala efû xwestin e. Heke ev di wesfê pêwîst de be, heke di bara careke din nekirina wî guhê ku efû'ya ji wî tê xwestin de ezm û nedameteke/poşmanîyeke qet'î îhtîwa bike, bihewîne, ew wê jengar û pîsîtîya ku hessasîyeta qelb kuh dike, xîç dike, jê diavêje û wî li hemberî heqîqetê adeta wî bi ayneyeke mûcella (rohnak û berraq) tîne.. Qelb, bes bi vî awayî tê halekî ku ew ji feyzan (û tecellîyên nûranî) re mûsaid û amade bibe.

Di bara bi îstiğfaran rohnîbûna qelbên ku di netîceya kirina gunehan de hatine reşkirin de ev hedîsa şerîfa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sel-lem-, ji hêla tesfîya qelbî ve çi qeder îrşadbexş û îqazkar e:

"*Dema bende gunehekî bike nuqtekeke reş dikeve dilê wî. Heke ew terka wî gunehî bike, xwe bi îstiğfarê bigre û berê xwe bide ser tobê qelbê wî tê bicîlakirin. Lêbelê heke ew wiha neke û dubare li xetayê xwe vegere, nuqteyên reş zêde dibin û di encamê de ew qelbê wî tevî didin ber xwe.*

*Ha ew rewşa ku Hezretê Heq Teala zikrkirî:*

كَلاَّ بَلْ رَانَ عَلَى قُلُوبِهِمْ مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ.

*"**Na, lê bi sebeb tiştên** (xirabên) **ku wan kirine û qezenc kirine jengarê qelbên wan girtine**."*[221] *ev e.*"[222]

Dema em bi çavê dil li cîhanê temaşe dikin, em dibînin ku hemû mex-lûqat, berî şukirkirina ji bo ajar û nîmetên îlahî di mewqîîyê îtîrafkirina neka-rîn û eczîyeta xwe de ne. Ji bo kurê-adem ê ku xwedî îrade ye û di bikaranîna vê îradeyê de jî bi awayekî mûtleq selîmbûna wî ji xetayan ne mûmkin e, îstiğfar yekem gav e ku di rêya teqerruba (xwe nêzîk-kirina) ji bo Xuda de, were avêtin.

Dûa, bi wesfê xwe ku dikare ji bo bangkirina merhemeta îlahî bibe medar, xwedî hêzeke bitesîra ew qeder mezin e ku xilasbûna ji îbtîlayên mûqedder temîn bike. Ji ber vê ye ku wekî me li jorê bi wesîleyeke din îfade kiribû, di hemû terîqetan de dersa manewî bi îstiğfarê destpê dike.

Di bara giringîya dûa'yê de di ayetên pîroz de wiha tê gotin:

221. Mûteffîfîn, 83/14.
222. Tirmizî, Tefsîr, 83.

قُلْ مَا يَعْبَأُ بِكُمْ رَبِّي لَوْلَا دُعَاؤُكُمْ.

"(Ya Resûlê min!) **Bibêje: Piştî ku dûa û niyazên we nebin, bila Rebbê te çima qîmet bide we?..**" [223]

"**Dema evdên min, pirsa min ji te bikin, bi rastî ez nêzîk im, bersiva laveya lavekaran didim; dema ew gazî min bikin. Naxwe bila evdên min bersiva doza min bidin û bila îmanê bi min bînin, da ku ew rêya rast bibînin**."[224]

"**Bi dizî û bi zarezar û lakelak, li ber Xudayê xwe bigerin, bi rastî ew, ji sînorbuhêran hez nake**."[225]

Mezinê me Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsên şerîf ên xwe de wiha gotiye:

"*Li cem Xuda ji dûa-kirina ji wî, tiştekî bi qîmettir nabe. Dûa, kakila îbadetê (evdînîyê) ye.*"[226]

"*Ew kesê ku dixwaze dûayên wî di wextê tengasî û dijwarîyan de qebûl bibin, bila di zemanê ferehî û rehetîyê de dûa zehf bike.*"[227]

"*Derîyên dûa'yan ji kî re vebûbin, maneya wê derîyên rahmê ji wî re hatine vekirin.*"[228]

"*Dûa ji Xudê Teala bikin û bawer bikin ku ewê werin qebûlkirin. Vê zanibin ku Cenabê Heq, dûaya bi qelbekî ğafil tê kirin, qebûl nake.*"[229]

Bi mûqtezaya hedîsên şerîf, zenkirina li cem Xuda qebûlbûna dûayên ku bi qelbekî ğafil û bi uslûbeke laûbalî werin kirin, ji xapandina şeytanî pê ve ne tiştekî din e.

**Îmamê Rebbanî** -quddîse sirruh- dibêje:

223. Furqan, 25/77.
224. Beqere, 2/186.
225. 'Eraf, 7/55.
226. Tirmizî, Deawat, 1.
227. Tirmizî, Deawat, 9.
228. Tirmizî, Deawat, 101.
229. Tirmizî, Deawat, 65.

“Cengek bi îttîfaqa du artêşan tê qezenckirin. Yek ji wan leşkerê ğezwê (artêşa serhedê) ye, ya din jî leşkerê (artêşa) dûa ye.”

Çawa Hezretên eshabê kîram jî dema diçûne cîhadê bi îlawe li ser dûayên wan ji bo serkeftinên xwe, ji xwe re ji Eshabê Suffe jî dûa dixwestin.

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Hîç ti dûayek nîn e ku ji dûaya mûmînekî ya di ğiyaba (nehazirîya) wî de ji mûmînekî re dike bêhtir were qebûlkirin*.”[230]

Însan ji bo xwe, ji wan kesên ku hêvî dikin dûayên wan qebûl dibin, dûa taleb dikin. Haleveku esil saiq û handera ku qebûla dûa temîn dike, li cem îlahî ji meqbûlîyeta yê ku vê dûayê dike zêdetir, îxlas û semîmîyeta di talebê de ye. Maneya vê; dûayeka jidila ku gunehkarek bi îxlas û semîmîyet ji birayê xwe yê mûmîn re bike, bi mewqîîya xwe ya li cem Xuda, ji wê dûaya bêdilê xwe ya ku yekî fersex bi fersx ji wî li pêştir (baştir) be, bi xêrtir e. Bende bi gunehkar-bûnîya xwe, maneya wê ne ev e ku haşa Cenabê Heq ew terikandiye. Heke wiha bûna, bi navê “ğeybet”ê gotina xeta û qusûrên gunehkaran yek ji gunehên mezin nehat jimartin. Ha li vir kî dibe bila bibe, divê mirov qîmetê çêkirin û xweşkirina dilekî ji bendeyên Xuda û wergirtina dûayên semîmî yên wî, îdrak bike, bizane.

Eshabê kîram, ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kirin:

“-Dûaya ji her dûayê meqbûltir kîjan e?”

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

“-*Ew dûa ye ku di beşa dawîna şevê de û di piştî her ferza nimêjê de tê kirin*.”[231]

Naxwe ji bo qebûla dûayê, sirf bi lefz tenê îfadekirina talebê têrê nake, ne kafî ye. Divê qelb, bi arzûyên wê maneya ku li kelîmeyên hatine bijardin, tê barkirin, bilerize û heke dûa di îstîqameta efûbûna gunehekî de be jî, divê ew di bara careke din nekirina wî gunehî de digel ezim û biryardarîyeke qet‘î û binbirrane were talebkirin.

230. Tirmizî, Birr, 50.
231. Tirmizî, Deawat, 78.

Li alîyê din ji bo dûa karibin bilind bibin herin cem Heq, ji hêla temînkirina vê çûna cem Heq ve, ehemmîyeteke pirr mezina îstîqametê û amelên salih heye. Çawa Xuda di ayeta pîroz de wiha gotiye:

"**Peyvên tertemîz** (nîyaz û dûayên semîmî) h**ildigerin cem Wî** (Xudayê mezin). **Amelê salih vê bilindîyê bicih dike**."[232]

Îcab dike mirov hewl bide dûayên xwe di navbera "xewf û reca"yê de, yanî di neqebeyna tirs û hêvîyê de bike. Dûa û îstiğfar ferd û milletan dibin, digihînin selametîyê û mûsîbetên ku eger heye werin jî berteref û îzale dikin.

Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- di bara rizgarbûna ji nexweşîyên dilî û qebûlbûna dûayan de wiha dibêje:

"*-Bi dilekî ji agirê poşmanîyê tije û bi çavên şil dûa û tobe bike! Lewra çîçek, li cihên bertavî û şil bel dibin, dipişkivin!*"

Tobeya yekem, bi pêğemberê yekem Hezretê Adem -eleyhisselam- destpê kiriye. Wî, di wê tobeya xwe de wiha nîyaz kiriye, gotiye:

رَبَّنَا ظَلَمْنَا أَنفُسَنَا وَإِنْ لَمْ تَغْفِرْ لَنَا وَتَرْحَمْنَا لَنَكُونَنَّ مِنَ الْخَاسِرِينَ.

"**Xudayê me! Me bi xwe zulim li xwe kir. Heke tu li me nebûrî û li me neyî rahmê, hemin em ji ziyankeran dibin**."[233] Ev dûa, ji bo zarokên wan, ên ku di piştî wan de heta qiyametê jî li pey wan werin bûye nimûneyeka îstiğfarê.

Cenabê Heq, ji bo dilên wan ji ğefletê şîyar bibin û ew ji nexweşîyên manewî şîfa binin, bang li bendeyên xwe dike û ji wan re wiha dibêje:

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Bi tobeyeka semîmî li Xuda vegerin!** (Heke hûn wiha bikin) **hêvî heye ku Rebbê we, neqencîyên we veşêre!**.."[234]

Di berê xwe dana Xuda û qezenckirina dil ya sewîyekeke bilind de heta tu bibêjî bes dûa û îstiğfar giring in. Qelb, bi sebeb tesîrên curecur her an û gavê eger û îhtîmal heye ku biguhere û ji Heq averê bibe, vêca ji bo ew ji hîdayetê cuda nebe, ji însanî re ji xwe girtina bi dûa pê ve ti çareyeke din nîn e.. Rebbê Mezinê me, di vê mijarê de bendeyên xwe hîn dike ku ew halo dûa bikin û bibêjin:

232. Fatir, 35/10.
233. 'Eraf, 7/23.
234. Tehrîm, 66/8.

رَبَّنَا لا تُزِغْ قُلُوبَنَا بَعْدَ إِذْ هَدَيْتَنَا وَهَبْ لَنَا
مِنْ لَدُنْكَ رَحْمَةً إِنَّكَ أَنْتَ الْوَهَّابُ.

"**Rebbê me! Piştî te em anîne ser hîdayetê dilên me bi ser batil de nevegerîne û ji cem xwe rahmê ji me re bibexşîne. Bêguman her tu yî, yê ku lutfa wî ya zehftirîn e**."[235]

Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- ev talîmata îlahî ji xwe re bi wirda jîyana xwe kiribû, ji lewma wî dem bi dem wiha dûa dikir, digot:

«يا مُقلبَ القُلوبِ ثَبِّتْ قلْبي علَى دِينِكَ».

"*Hey Xudayê minê ku dilan ba dide û werdigerîne! Dilê min, li ser dînê xwe sabit bike*."[236]

Dûa, ji bo paqijbûna qelban yek ji wasîteyên giringtirîn e. Ev ayeta pîroz, giringîya dûa di paqijkirina dil ji gemarên manewî de çi xweş îşaret dike, dibêje:

"**Ew kesên ku di piştî wan** (ensar û mûhaciran) **de tên wiha dûa dikin, dibêjin:**

**Ey Rebbê me! Me û birayên me yên ku berî me îman anîne, efû bike! Di qelbên me de li hemberî mirovên ku îman anîne hîç ti kînê nehêle! Ey Rebbê me! Tu, xwediyê şefqet û merhemeta bêdawîn î**."[237]

Lewra divê mirov pêşî astengên neyênî yên ku nahêlin mirov bi emanca xwe bigihe, îzale bike û bi vî awayî mirov zemîn û pêgeha dilê xwe ji bo ğayeya esilî û esasî mûsaid û vebohtî bike. Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- daye zanîn ku divê mirov xwe bavêje ber penaha Xuda û tim nîyazan jê bike da ku mirov karibe dilê xwe ji mirina hestên wî rizgar bike û wî ji hest û hizrên neyênî yên di wî de paqij bike. Ew, vê jî di şexsê xwe bi xwe de bi mîsal dike û dibêje:

235. Alî Îmran, 3/8.
236. Tirmizî, Qeder, 7.
237. Heşr, 59/15.

“*Xudayê min! Ez, xwe ji îlmê ku feyde nade, ji dilê ku natirse, ji nefsa ku têr naxwe û ji dûaya ku qebûl nabe, diavêjim ber penaha te.*”[238]

“*Xudayê min! Çawa te cila sipî ji qirêjê paqij kiribe, wisan dilê min jî ji gunehan paqij û zelal bike.*”[239]

Ji bo mirov karibe bigihîje qelbê selîm ku ev yek jî bes bi lutfa Rebbê Mezinê me, bicih tê. Çawa Hezretê Îbrahîm -eleyhisselam- ê ku di vê de biser ketibû ku ew qelbekî selîm ji Rebbê xwe teqdîm bike, ji bo ew di roja mehşerê de ewa ku têde hemû tiştên veşartî dertên holê, mehcûb û şermende nebe, wî ev nîyaz ji Rebbê xwe kiriye, gotiye:

“(Rebbê min!) **Wê roja vejînê, ew roja ku mal û zaro feyde nadin lêbelê ewê ku bi qelbekî selîm were cem Xuda feyde dide, min mehcûb û şermende neke!**”[240]

Mezinê me Nebîyyê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- jî wekî bapîrê mûkerremê xwe Îbrahîm -eleyhisselam- bi heman awayî xwe avêtiye ber penaha Xudayê xwe û ev nîyaz jê kiriye, gotiye:

“*Xudayê min! Ez, ji te zimanekî rastgo û qelbekî selîm dixwazim.*”[241]

Li alîyê din di dûayan de dubare-goyî û sebat jî ehemmîyetdar e. Ji bo sebatê ji hindikahî ve sê caran dubarekirina dûayê uslûbeke nebewî ye. Dûa, heke semîmî be, ew bi ti awayan bi şûn de nayê vegerandin û her qebûl dibe. Lêbelê hinek taleb û daxwaz hene, digel ku ew semîmî ne jî dîsa hinek caran bi “qedera mûtleq” re ahengdar nabin. Ji ber vê ewê ku dûa dike, divê fitûrê (bêzarbûnîyê) şanî nede û ew li ser dûayan her dewam bike. Lewra hembera dûayên ku li dinyayê îcabet nekirine, wê li alema axretê were dîtin.

### c- Xwendina Qur’anê û Tab‘îbûna Ehkamên Wê

Dema qelbên me feyza xwe ji rûhanîyeta Qur’anê wergirin û bi hikmet û sirran tije bibin hingê ew ji kelamê Xuda têr nabin. Lêbelê ev jî bi wê sewîya qelbî ve bend e ku dema em wê dixwînin em jê re xwedî bin.

238. Mûslim, Zikr, 73.
239. Buxarî, Deawat, 39.
240. Şûera, 26/87-89.
241. Tirmizî, Deawat, 23.

Yek ji wan îkramên mezintirîn ên ku Cenabê Heq lutf kirine jî ev e ku wî însan ji bo Qur'ana Pîroz bi mûxateb û berpeyv kiriye.

Pîvan û endazên tekûz û mûkemmel ên hizûr û aramîya rastîna rûh û bedenê, di naveroka feyzdara Qur'ana Pîroz de mewcûd in. Seadet û selametîya însanî, bi qasî para xwe wergirtina wî ya ji van pîvanên îdeal û nimûneyî mûmkin e.. Ew kesê ku xwe neavêtibe ber penaha Qur'ana Pîroz û bi awayê pişta xwe dana wê wî mûwazene û hevkêşîya xwe winda kiribe, maneya vê wî xwelî li heysîyeta însanîyetê kiriye, li hemberê gihiştina vê ajar û nîmetê jî ew ber bi nankorîyeke dehşetdartirîn ve hatiye kişkişîn û wî di ger û girdaba hewes û arzûyên xwe de xwe biriye helakê..

Qur'an, ji bo wan rûh û gîyanên ku xwîn ji wan tê û ji bo wan dilên westiyayî serkehnîya wan hikmetên îlahî ye ku ew (ji wan gîyan û dilan re ) şîfabexş û tesellîbexş in. Rastîya "**mirin**"ê dehşetengîz û misoger e, ew her tê. Ew lutfeke îlahî ye ku wan pîvanan pêşkêş dike ku evdekî mûmîn karibe wê di gihiştina Rebbê xwe de wek şeva dîlana xwe pêşwazî bike.

Rebbê Mezinê me, kelamê îlahî yê xwe ji bo temamê însanîyetê wiha pêşkêş dike, dibêje:

يَا أَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَاءَتْكُمْ مَوْعِظَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ وَشِفَاءٌ لِمَا فِي الصُّدُورِ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِلْمُؤْمِنِينَ.

"**Gelî mirovan! Ji we re ji Xudayê we şîretek, ji bo dilan şîfayek û ji bo mûmînan hîdayetek û rahmek hatiye**."[242]

Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî di hedîsên şerîf ên xwe de wiha dibêje:

"*Her kesê ku zîyafetek amade kiribe, dixwaze însan werin ser zîyafeta wî û ew ji vê memnûn jî dibe. Qur'an jî zîyafeta Xuda ye. Naxwe ji wê dûr nemînin.*"[243]

"*Qur'anê bixwînin.. Lewra Xuda, wî kesê ku Qur'an di nava wî de hebe naxe ezabê..*"[244]

242. Yûnus, 10/57.
243. Darimî, Fezailu'l-Qur'an, 1.
244. Darimî, Fezailu'l-Qur'an, 1.

“*Ehlê rastî yê Qur’anê, ehlûllah in û ew bendeyên xas ên Xuda ne*.”[245,246]

Ew qelbên ji zikrûllah û ji tîlaweta Qur’anê mehrûm bin, bi qesawetê (hişkbûnê) dûçar dibin. Çawa ji eshabê kîram, Ebû-mûsa-el-Eş‘arî -radîyellahû anhû- jî şîret li kesên ku dihatin serdana wî, dikirin û ji wan re digot:

“Li ser xwendina Qur’anê dewam bikin! Zinhar, mûddeteke dirêj xwendina Qur’anê neşemirînin! Heke na, dilên we jî dê wekî dilê mirovên berîya we hişk û hola bibe.”[247]

Ev bûyera ku dide zanîn Qur’ana Pîroz heta bi heywan û melaîketan jî di bin bandora xwe de dihêle, pirr îbretdar e:

Useyd bin Hudeyr -radîyellahû anhû- vedibêje:

Min şevekê Sûretê Beqere dixwend. Hespê min jî li ber serê min girêdayî bû. Di navberekê de hespê min destpê kir, rabû ser herdu pêyan. Min xwendina xwe qut kir; hesp bi aram û sakin bû. Min dubare dest bi xwendinê kir, dîsa hesp rabû ser herdu lingan. Heta min endîşe kir ku hesp pêl kurê min Yehya bike, ji lewma min ew anî cem xwe.

Ew wext, dema min li asîmanî meyzand, min di ser xwe re hinek tiştên wekî qendîlan dîtin. Piştre ew ber bi asîmanî ve bilind bûn, çûn û ji ber çavan berze û winda bûn.

Sibehê ez zû çûm cem Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û dema min tiştên dîtin tev jê re vegotin, wî ji min re got:

“*-Bixwîne, ya Useyd bixwîne!*” û piştre ji min pirs kir, ji min re got:

“*-Ya Useyd! Ma tu dizanî ewên ku te dîtin çi bûn?*” Min jê re got:

“-Na, ez nizanim ew çi ne.”

245. Hakim, Mûstedrek, I, 743.
246. Ew ehlê Qur’ana Pîroz ku sade bi jiberkirina wê tenê nemane, di heman demê de ew ji ehkamê wê re bûne peyrew û exlaqê wê ji xwe re bi exlaq kirine, Hezretê Heq Teala gellek îhsan li wan kirine. Heta hinek ji seydayên hafiz, wek îkrameke taybetî ya Cenabê Heq ji wan re, di piştî wefata xwe de hatiye mûşahedekirin ku cesedê wan ne rizîye. Çawa yek ji dostên Heq Mehmûd Samî Remezanoğlû -quddîse sirruh- li Adanayê hafizekî ji van wesfan re xwedî, sih salan di piştî wefata xwe de bi zerûreta vekirina rê, dema qebra wî hate vekirin, wî got; min bi xwe mûşahede kir û dît ku wa ye cesedê wî ne rizîye, zêdebarî vê kefenê wî jî sip û sağlem bû.
247. Mûslim, Zekat, 119.

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji min re got:

"-Ew melaîket bûn, hatibûn da ku li tîlaweta Qur'ana te guhdarî bikin. Heke te li ser xwendinê dewam kiribaya, wan heta sibehê li te guhdarî dikir. Ew melaîket ji însanan re veşartî nediman, însanan jî dê karîbûna wan bibînin."[248]

Qur'an, ji însanî re nazil bûye, hatiye xwarê. Ew, ji bo "însanê dil" xezîneyeka kûra tefekkurê ye. Netîceya dûr mana ji rûhanîyeta Qur'anê, xusraneke mûtleq û ebedî ye. Cenabê Heq, ji bo mirovên ku ji deryaya hikmet, îbret û sirrên di Qur'anê de ğafil mabin, wiha ferman dike, dibêje:

أَفلا يَتَدَبَّرُونَ الْقُرْآنَ أَمْ عَلَى قُلُوبٍ أَقْفَالُهَا.

"Ma ew Qur'anê hûr û kûr nafikirin? Yan jî li ser qelban (ên wan!) kilîd hene?"[249]

Qur'ana Pîroz, tezahureke navên Cenabê Heq e, ew bi awayê kelamî di dinyaya îdraka me de hatiye dan-xuyakirin.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de îhtîşama bêdawî ya maneya Qur'ana Pîroz bi vî awayî îfade dike, dibêje:

"**Heke darên ku li sererdê hene qelem bûna, derya jî hibr bûna û heta heft deryayên din jî li wê bihatana zêde kirin dîsa gotinên Xuda** (bi nivîsandinê) **xilas nedibûn. Bêguman Ellah serdest û xudan hikmet e**."[250]

Bêşiwar dema qelbên me feyza xwe ji rûhanîyeta Qur'anê wergirin û bi hikmet û sirrên wê tije bibin, hingê ew ji kelamê Xuda têr nabin. Lêbelê ev jî bi wê sewîya qelbî ve bend e ku dema em wê dixwînin, em jê re xwedî bin. Bi vê sebebê ji bo mirov bi heqîqeta Qur'anê wasil bibe, bigihe, îcab dike mirov îrtîfaê (bilindbûnîyê) bi qelb bide qezenckirin. Lewra Qur'ana Pîroz ku rêbereke hîdayetê ye, ew mahîyeteke wiha hildigre ku kesê jê nêzîk bibe, li gorî nîyeta qelbî û rewşa wan, ew hem dikare wan bibe ser rêya rast û îrşadê, hem jî dikare wan bibe ser îdlal û rêşaşîyê.

248. Buxarî, Fezailu'l-Qur'an, 15.
249. Mûhemmed, 47/24.
250. Luqman, 31/27.

Dema ayetên Qur'anê bi durustî têne xwendin, wê bandora ku li ser alema dilî ya mûmînan çêke û coşa manewî ya ku di wan de tîne meydanê, Rebbê Mezinê me, wê bandor û coşê wiha eşkere dike, dibêje:

"**Ew kesên ku ji Rebbê xwe ditirsin, ji ber tesîra vê kitêbê mûyên wan gij dibin, hem bedenên wan, hem jî dilên wan bi zikrê Xuda germ û nerm dibin**."[251]

"**Dema ayetên Xuda ji mûmînan re werin xwendin, ew îmana wan zêdetir û xurt dike**."[252]

Mercê yekem ji bo bi durustî îstîfadekirina ji Qur'ana Pîroz, bi îhtîram jê nêzîkbûn e. Lewra ew îhtîram û sîyanet, tezahureke giringî-dana bi Qur'anê ye.

Bi rastî ji ber wan kemalat, heqîqet û sirrên ku di Qur'ana Pîroz de hene ku ew dikarin bi wan heta roja Qiyametê bersiva hewcedarîyên însanîyetê bide jî ew huwîyeta rêbereke mûhteşem e. Ellah Teala vê taybetmendîya Qur'ana Pîroz wiha eşkere dike, dibêje:

"**Bêşiwar ev Qur'an, bi rêya rasttirîn digihîne; mûmînên ku amelên salih dikin jî mizgînîyê dide wan ku ji wan re mûkafateke mezin heye**."[253]

Ji ber ku Qur'ana Kerîm pirtûkeke îlahî ye ku dê rêberîya wê heta bi qiyametê berdewam bike, her mûmînê di bin siha wê de jî heta derîyê mirinê yê ebedîyetê jê re were vekirin jî her mecbûr e ku bi hukmên Qur'anê û jîyana Qur'anê re sadiq bimîne. Li vê dinyayê seadet û selametîya qelbî, li axretê jî gihiştina bi rizaya Cenabê Heq û wek di nîmet û ajarên îlahî de ğerq bûn jî bes bi vî awayî mûmkin e.

Bi durustî îstîfadekirina ji Qur'anê bi qasî xwendina wê ya bi qelbî tehqîq dibe. Ev hedîsa şerîf, vî halê qelbî çi xweş îfade dike, dibêje:

Dema hate pirskirin; ji bo tîlaweta Qur'anê kîjan deng û qîraet xweşiktir e? Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha got:

"*Ew kesê ku dema tu Qur'ana xwendina wî dibihîzî, di te de vê hissê şîyar dike ku ew ji Xuda ditirse*."[254]

251. Zumer, 39/23.
252. Enfal, 8/2.
253. Îsra, 17/9.
254. Darimî, Fezail'ul-Qur'an, 34.

Ji xwe tişta ku Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- anî dehşetê û ji bo hîdayeta wî bûyî wesîle jî ew Qur'ana Kerîm bûye ku li mala xweha wî Fatima di nav xuşûê de dihate xwendin.

Ev ayetên pîroz, li ber me çirayê digrin ji bo em bizanin ka divê Qur'ana Pîroz bi keyfîyeteke çawa were xwendin:

"(Resûlê min!) **Ev Qur'an kitêbeke pîroz e! Me ew ji te re nazil kiriye da ku mirov li ser ayetên wê hûr û kûr bifikirin û xwedî aqilê selîm jî ji wê şîret bigrin**."[255]

"(Resûlê min!) **Qur'anê bi tertîl** (yeko yeko) **bixwîne**."[256]

Li alîyê din hatiye rîwayetkirin ku Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- Sûretê Beqere di diwazdeh salan de îkmal kir û dema wî ew xilas kir jî wek qurbana şukirê hêştirek serjêkir.[257]

Ebdûllah bin Ûmer -radîyellahû anhûma- jî karîye Sûretê Beqere di heşt salan de xilas bike.

Dema eshabê kîram deh ayet ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- fêr dibûn, heta ferman û hikmetên di van ayetan de baş fehm nekiribana û ew tetbîq nekiribana ji wan nebûrîne, neçûne dest bi hînbûna deh ayetên din nekirine. Ew bi îlmên di Qur'anê de bûne amil û dîsa bi hikmetên Qur'anî kamil bûne.[258]

Ev hemû şanî didin ku dema mirov kitêba Xuda bixwîne, divê mirov sade di naveroka teleffuzê tenê de nemîne, lêbelê divê mirov para xwe ji batinê wê jî bigre, divê bi xebera hukmên wê bike û divê mirov exlaqê Qur'anê jî ji xwe re bi exlaq bike. Ev jî yek ji mîsalên zehf balkêş e.

Osmanîyan di piştî esrê seadetê de bi sewîyetirîn serdema tarîxa Îslamê îdrak kirine û divê neyê jibîrkirin ku dewleta wan bi bereketa îhtîrama bilinda ku wan ji Qur'ana Pîroz re şanî dane, hatiye meydanê. Ev rîwayeteke tarîxî ya zehf belav û meşhûr e ku damezrênerê wê dewletê Hezretê welî sultan Osman Ğazî, şevekê li mala Şêx Edebalî mabû, Qur'an bi taqê odê ve daleqandî bû, bi hizra ku wê ji Qur'ana Pîroza bi dîwarî ve daleqandî re bibe bêhurmetî,

255. Sad, 38/29.
256. Mûzzemmil, 73/4.
257. Qurtûbî, el-Camî, I, 11.
258. Ahmed, V, 410.

wî ew şeva xwe bi bêxewî derbas kiribû.. Li alîyê din esasê dînî yê ku divê mirov bi bêdesmêj destê xwe nede Qur'anê jî wacibîtî û ehemmîyeta îhtîrama ji Qur'anê re şanî dide.

Ji xwe di nav edebên Îslamê de zehf giring û malûm e ku divê Qur'ana pîroz di cihê ji navikê berjêrtir de neyê girtin. Li alîyê din, sade ne xwendina Qur'ana Pîroz tenê, lêbelê heta meyzandina li nivîsên wê jî, ji ber ku ew wasîteyeke unsîyet û hogirî ya bi wê ye, meqbûl û heta sewab jî hatiye jimartin.

Li gorî divê mirov di hurmet-kirina ji bo Qur'ana Pîroz de qusûrê neke û heta mûmkin be divê mirov dem bi dem xwendina wê ji xwe re bike adet. Zêdebarî vê jî yekem fermana Qur'ana Pîroz «اقْرَأْ» ye, yanî "**bixwîne!**"[259] Divê mirov hîç ti zemanî hikmeta di nazilbûna vê fermana yekema Qur'anê de jibîr neke û ji aqilê xwe dûr nexe. Ehemmîyeta çawanîya vê xwendinê bi sehîh nebûna nimêja bêqîraet jî sabit e.

Axaftina yekema xelîfê Emewîyan Suleyman bin Ebdûlmelik ji gel re wiha bûye:

"Gelî bendeyên Xuda! Hûn kitêba Xuda ji xwe re bikin rêber. Bi hukmê wê razî bibin. Bi wê amel bikin. Lewra çawa ronahîya sibehê, şevê îzale dike, dibe, her wiha ev Qur'an jî hîle û xefkên ku şeytanî vedane, berteref dike."[260]

Dema em van tevan li ber çavan digrin, em bi hêsanî fehm dikin ku çi qeder divê unsîyet û hogirîya bi Qur'ana Pîroz cihekî giring di jîyana me de dagir bike. Divê em ji Rebbê xwe nîyaz bikin ku dilên me bi sirûr û keyfxweşîya kelamê lahûtî tije bibin, ji ser ve biçin. Çawa dûayeka Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- jî wiha bûye:

"*..Rebbê min! Bi hurmeta her navekî sipehî yê te, yê ku te ew li bendeyekî ji bendeyên xwe hîn kiribe, yan te ew di kitêba xwe de peya kiribe, yan jî te agahîya wî li cem xwe veşartî hiştibe, nîyaza min ji te ev e; Qur'anê bixe bihara dilê min, nûra singa min û çareya huzn û kederên min!.*"[261]

259. Eleq, 96/1.
260. Beyheqî, Kîtabu'z-Zuhd, rûp. 61.
261. Ahmed bin Henbel, Mûsned, I, 391.

## d- Bi Xuşû'ê Edakirina Îbadetan

**"Ji Xuda re her wekî ku tu wî dibînî îbadetê bike! Heke çi qeder tu wî nabînî jî, Ew her te dibîne."**[262]

Îbadet, îsbata sedaqetekê ne, şanî didin ku ew peymana bendeyî ji ezelî de dabû Rebbê xwe, ew hê li ser wê peymanê ye û jê re wefadar e. Demên îbadetan, ew wextên wusletê ne, ku di nav merc û şertên evdînîyê de bende ji her demeke din bêhtir ji Cenabê Heq nêzîk bûye.. Îbadet alemeke taybetî ye ku însan hemû derdên xwe yên meşğûlîyetên dinyayî ji dilên xwe diavêje derve, bi hizûra ku karibe tiştekî sade ji bo rizaya xwediyê xwe tenê bike, bêhna rûhê xwe vedike û gîyanê xwe xurt dike. Lewra dema însan herdu destên xwe di nimêjê de dibe ber guhên xwe û dibêje; Ellahû ekber, maneya wê, ew vê dibêje; min her tişt bi pişt xwe ve avêtiye û min yekser berê xwe daye Xuda.

Îbadet, bi tesîrtirîn serkehnîya şîfa û tesellîyê ye ku dikare kurê-însan ji endîşe û fikarên ji mirinê biwêdetir azad bike. Ew keş û hewayeke rûhî ye û tekane rê ye ku razemenîyên ji bo alema ebedî werin kirin, tê re derbas dibin. Îbadet bi van wesfên xwe, serkehnîyeke feyzê ye ku divê di rêya temînkirina mûwazene û selametîya qelbî de bi ti awayan neyên îhmalkirin.

Ji bo îbadet wê encama ku tê arzûkirin hasil bikin, bi xuşûê edakirina wan şert e. Xuşû jî ev e ku mirov bi hizûr û aramîya dil karibe digel hestên hezkirin û tirsê di hizûra îlahî de raweste. Bi xeşiyeta ji wî Sultanê Mezinê ku li hizûra wî ye, xwe qutkirina ji îxtîlat û têkilîya nav eğyaran (dîgeran), sade bi Wî re bûn û gihiştina bi vê hestê ye ku ez sade ji bo îbadetê Wî hatime aferandin.

Di nav îbadetan de ya mûhteşemtirîn û şamiltirîn jî "**nimêj**" e. Nimêj, dîyarîyek ji wan dîyarîyên mezintirîn e ku Xudê Teala ew ji bendeyên xwe re hedîye kiriye. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de gotiye:

"*Heke mûmînek pêşî sipehî desmêj bigre, paşê rabe ji serî heta bi dawîyê bi dilê xwe û rûyê xwe (yanî bi hemû hebûna xwe) berê xwe bide ser nimêjê, tam bi hizûr û xuşûê du rekat nimêj bike, cennet jê re wacib dibe.*"[263]

Bi mezîyetên rûhî yên ku ew bi însanî dide qezenckirin hîç ti îbadeteke din nîn e ku karibe cihê nimêjeke rasteqîne bigre. Ji bo nimêjeke wiha jî, divê

262. Buxarî, Îman, 37.
263. Mûslim, Teharet, 17.

ji ğeyrî Heq her tişteke din heta nefsa însanî bi xwe jî ji çavên xwe û ji dilê xwe bixe.

**Suleyman Daranî** -quddîse sirruh- gotiye:

"Heke ez di navbera kirina du rekat nimêj û çûna cenneta Firdewsê de werim serbest hiştin, ezê du rekat nimêj tercîh bikim. Lewra çûna cenneta Firdewsê daxwazek e ku li xweşîya nefsê diçe. Lêbelê heke ez du rekat nimêj bikim, ez bi Rebbê xwe re bûme."

Ew kesê ku radibe ser nimêjê, ew nikare ji nimêjê pê ve bi tiştekî din ve meşğûl bibe. Nimêj wî ji her cure masîwa asteng dike. Di nimêjeke rasteqîne de perde ji ser dilan têne rakirin û nûrên heqîqetê tecellî dikin. Ew bi pevrebûna digel Heq Teala re wusleteke bêtarîf dijî. Di îbadetên din de jî rewş ne wiha ye. Mesela mirovekî ku rojî girtibe, dikare li bazarê bibe firoşer û bibe kirryar jî.. Di heccê de jî rewş her wiha ye. Lêbelê nimêjker, ne dikare bibe firoşer, ne jî dikare bibe kirryar.. Ew, sade nimêjker e. Yanî ew mecbûr e ku bi maddeya xwe û maneya xwe di hizûra îlahî de bibe.

Ew nimêja ku bi rast û durustî hatibe edakirin, îbadeteke fezîletdar e, bi feyz û rûhê ku dide mûmînî, ji ketina girdab û gera temayulên nefsanî rizgar dike û wî bi vê hestê digihîne ku ew tim û daîm li hizûra îlahî ye û di bin mûraqebeya wî de ye..

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsên şerîf ên xwe de gotiye:

"***Ji Xuda re her wekî ku tu wî dibînî îbadetê bike! Heke çi qeder tu wî nabînî jî, lêbelê Ew her te dibîne***."[264]

"*Di nimêjê de mirinê bîne bîra xwe. Lewra heke însanek mirinê bîne bîra xwe û nimêj bike, ew nimêj kamil û sipehî dibe. Nimêja xwe wekî nimêja wî kesê ku difikre ew nimêja dawîna xwe dike, bike. Xwe, ji her tiştê ku di dawîyê de uzr xwestina te lazim bike jî, dûr bike.*"[265]

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de ji bo nimêja ku bi durustî tê edakirin jî wiha dibêje:

264. Buxarî, Îman, 37.
265. Deylemî, Mûsned, I, 431.

“.. **Bi durustî nimêjê bike! Bêguman ew nimêja ku bi maneya kamil tê edakirin, ji neqencî** (xirabî, mekrohî) **û bêtoretiyan** (ji tiştên ku aqilê selîm û dîn teswîb nake) **re dibe asteng**.”[266]

Astengkirina nimêjê ya xirabîyan bi vê ve bend e ku ew halê xuşû û hizûrê yê di nav nimêjê de di piştî nimêjê de jî dewam bike. Heke di wî kesê ku nimêjê dike de mûhafezayeke wiha nayê dîtin, naxwe ew bi maneya kamil ne nimêjker e.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de kesên ku wiha nimêj dikin ji vê tehdîda îlahî re bi mûxateb dike, hem jî çi gefeke ğemnak û dijwar e:

“**Xwelî li wan nimêjkeran be ku nimêja xwe bi ciddî nagirin! Ew, di hemû karên xwe de riyakarîyê dikin û arîkarîyeke biçûktirîn jî asteng dikin**.”[267]

Naxwe kî bi rîayetkirina tadîla erkanên wê nimêja xwe eda neke, haya wî jê nebe ku ew li hizûra îlahî ye û aqilê wî û fikra wî bi bazirganîya wî ve û bi meşğûlîyetên dîtir ên dinyayî ve bimîne, nimêja ku wî kiriye, wan feyzên ku jê têne hêvîkirin, hasil nake. Nimêjên wiha ji mecbûrîyetê têne kirin, ew sade ji stûyê xwe kirina deynê xwe tenê temîn dikin.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de nimêjeke rasteqîne û îdeal wiha îfade dike, dibêje:

“**Bi rastî mûmîn bi rizgarîyê gihane; ewên ku di nimêjên xwe de di nav xuşûê de ne**..”[268]

Ji sehabîyan Ebdûllah bin Şixxîr -radîyellahû anhû- halê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- yê di nimêjê de wiha teswîr dike, dişayesîne:

“Min pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di ser nimêjê de dît. Ji ber girîyê wî dengekî wekî dengê beroşa ku dikele, ji singa wî dihate bihîstinê.”[269]

Dema Hezretê ‘Elî -radîyellahû anhû- radibû ser nimêjê, sîmayê wî zer dibû, wî xwe ji her tiştî heta xwe ji bedena xwe jî xwerû dikir. Di mûharebekekê de tîrek ketibû lingê mûbarekê wî, ji bo deranîna wê ew rabûbû ser

266. Enkebût, 29/45.
267. Maûn, 107/4-7.
268. Mûmînûn, 23/1-2.
269. Ebûdawud, Selat, 156-157; Ahmed bin Henbel, Mûsned, IV, 25.

nimêjê. Lewra wî zanîbû ku di vê rewşê de ewê hest bi îzdîrab û jana deranîna wê neke. Lêbelê gelo çend însan hene ku ji wan re bi nesîb û mûyesser bûbe ku karibin têkilîya xwe ji dinyayê qut bikin û di vê pîvanê de wisan bi hizûr û dilaramî nimêj bikin?

Herçî ew kesên ku bi vê wesf û mûkemmelîyetê nimêj nakin jî, divê xwe bi ber ye’s û hêvî-nemanê ve bernedin û ranebin nimêja xwe terk nekin. Lewra her nimêjkerê ku van nimêjên şeklî yên xwe eda dike, hema nebe nebe ew li ser edakirina deynê xwe yê ferz dewam dikin ewê rojekê ji rojan çi hindik çi jî gellek di vê îstîqametê de bi kemalê bigihe..

Her pênc nimêjên ku her rojê di hinek wextên dîyarkirî de têne edakirin, zemanê însanî bi programekê ve peywend dike, dîsîpîlîna jîyaneke bi întîzam pê dide qezenckirin û hesta wî ya berpirsîyê xurt dike. Ew însanên ku jîyana wan li ser aheng û însîcamê nebin, mirov nikare ji hizûr, aramî û dilşadîya alema hundurîna wan biaxive. Li kêleka vê nimêj, ji hêla maneyî ve ji îmanê re mûhafezakeke sağlem, ji tefekkurê re kûrahîyê, ji wextên tirsê re tesellî û ji zemanên keyfxweşîyê re jî lezzeteke ulwî teşkîl dike. Dîsa nimêj, îbadeteke ji feyz û bereketan tije ye ku ew ji rûhanîyetê re dibe destek, ji qelb re keyfxweşî û safîyetê bexş dike û jê re unsîyet û hogirîya îlahî zêdetir dike.

Her wiha ye rojî jî, yek ji wan îbadeta ye ku di têkoşîna jîyanê de zerûrî ye; lewra însan pê bi dinyaya xwe re têdikoşe, bi wê ji bo axreta xwe cehd û xebatê dike, ew di rêya têkoşîna li dijî hewes û arzûyên nefsa xwe de pê digihîje silûkê da ku pê bi bilindtirîn mertebeyên îhsan û teqwayê bigihîje.. Ew bi rojî-girtinê bi sebr û îrade dibe, li dijî arzûyên nefsanî yên xwe li ber xwe dide û exlaqê xwe mûkemmel dike.

Esil ğayeya“**Rojî**”yê ev e ku însan di nav hesta daîmî ya îbadetê de li dijî astenga nefsê têkoşîn bike, wê di bin kontrolê de bigre û karibe bandora wê daxe asta biçûçiktirîn.

Dîsa rojî, digel ku însanî bi fezîletên exlaqî yên her wekî sebr û sebat, qenaet, razîbûna bi halê xwe, xweragirî û metaneta li hemberî meşeqqetan digihîne, lêbelê ew bi mehrûmîyet û birçîkirinê jî qedr û qîmetê nîmetan di bîra însanî tîne. Rojî, çi zengîn be, çi feqîr be hîç ferq nake, bi awayê dan t‘amkirin û çêjandina birçîbûnîyê bi her kesî wan wekhev û yeksan dike. Rojî, bi vê wesîlê halê însanê hejar, belengaz, sefîl û birçî di bîra însanê têrmal dixe û di wan de hestên arîkarî û merhemetê geş û xweş dike. Di encamê de ew di însanan de li hemberî hev hesta şukranê teqwîye dike.

Rojî, di însanî de hestên teqwayê zindî dike û safîyeta qelb zêdetir dike.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de gotiye:

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Çawa rojî li ser mirovên berîya we hatibû ferzkirin, ew aynî wisan li ser we jî hatiye ferzkirin. Hêvî heye ku hûn bi xêra vê bi teqwayê bigihin**."[270]

Ji bo terbîya vîyan û îradê, usûleke din nîn e ku karibe ji rojîyê bi bandortir bibe. Îrade jî, yek ji wasîteyên bingehîn e ku însan karibe li hemberî harbûnî û zêdegavîyên temayulên nefsanî û tabîî yên di însanî de hene, raweste.

Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- ji bo gihiştina nîmetên alema ebedî di bara li vê dinyayê lazimîya hindik xwarinê de wiha dibêje:

"*Xureka esilî ya însanî, evîna îlahî û hikmet e. Bi vê sebebê ji tixûbê wî zêdetir ji wî re dana xureka çermî ne muwafiq e*."

"*Însanî ji ber ku xureka rûhanî ya esilî jibîr kiriye û ketiye endîşeya xureka çermî, ne rehet e. Lewra ew têr naxwe. Ji çikûsîya xwe rûyê wî zer bûye, lingên wî dilerizin, dilê wî bi telaş lêdixe. Haleveku xureka sererdê li kuderê ye, xureka bêdawînîyê li kuderê ye?!*."

"*Ellah di bara şehîdan gotiye: «**Li cem Rebbê wan, rizqê wan tê dayîn**»[271] Ji bo wê xureka manewî ne dev heye ne jî beden heye*."

Ji bo mirov bi heqîqeta rojîyê bigihe û karibe ji rûhanîyeta wê îstîfade bike jî, divê mirov bi tundî xwe ji îhmalkarîyên ku wê xirab dikin, biparêze. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de dibêje:

"*Rojî, sade ne xwe qutkirina ji xwarin, vexwarin û yên wekî van e. Lêbelê rojîya kamil û sewabdar, devjêberdana ji peyv û karên bêfeyde û gotina xirab (gotegotan" e. Heke yek çêran ji te re bike, yan jî li hemberî te bizaveke cahîlane bike, jê re bibêje: «Bêşiwar ez bi rojî me!»*"[272]

Çawa îbadetê rojîyê li ser mirovan hatiye ferzkirin ji bo ew arzûyên nefsanî yên wan frên û hefsar bike û îradeya wan terbîye û perwerde bike. Aynî wisan îbadetê **zekat**ê jî li ser mirovên zengîn û maldar hatiye ferzkirin ji bo ew

270. Beqere, 2/183.
271. Alî Îmran, 3/169.
272. Hakim, Mûstedrek, I, 595.

dîwarekî li ber wan harbûnî û serxweveçûnên mûhtemel deyne ku eger heye ew di netîceya rambûna nefsa serwetmendan ji bo serwetê de werin meydanê. Her wiha ew nehêle ku di hewcedaran de jî li hemberî dewlemendan temayulên neçê û xirab ên her wekî kîn, nefret û çavnebarîyê şîn bibin. Ew bi zekatê jîyana sosyal û heyata îctîmaî diparêze û ferdan bi mehebbet û hevhezîyê bi hev û din ve girêdide.. Îslam, di sîstema sosyala xwe de mehebbet û hevhezîyê di navbera feqîr û zengînî de temîn dike. Ji bo berterefkirina hesed û xusûmetê "**zekat û înfaq**" helbet îbadeteke heta tu bibêjî bes, giring e.

Zengîn dê li hizûra Xuda hesabekî zehf giran bide; ka wî malê xwe ji kuderê qezenc kiriye û ew li kuderê sarf kiriye, qezenca wî helal bûye yan jî ne helal bûye, wî sedeqa xwe ya zekatê daye, yan jî nedaye. Ew bi ferman-berkirina xwe ku beşeke diyarkirî ji serweta xwe bide xizanan, ji hêla malî û darayî ve bi îmtîhaneke mezin hatiye bi peyrewkirin. Lêbelê digel mûkellefîy-etên dîger, heke ew vê îmtîhanê jî qezenc bike, êdî ew dikare bi rizaya îlahî û nîmetên cennetê nail bibe, bigihe.

Îbadeta zekatê ku di gellek cihên Qur'ana Pîroz de behsa wê hatiye kirin, ew di 27 (bîst û heft) cihan de jî bi sitûna dîn, nimêjê re hatiye zikrkirin, ev jî wê giringîya ku pê hatiye dayîn, şanî dide.

Zekat, deynek e, miqdarê wê dîyarkirî ye, ew kesê ku îmkana wî ya zekatê hebe Xuda lê ferman kiriye ku ew wê bide hewcedaran û vî deynê xwe ji stûyê xwe eda bike. Cenabê Heq di Qur'ana Kerîm de wiha dibêje:

"**Di serwetên wan de ji bo parsek** (feqîrê ku dikare hewcedarîya xwe erz bike) **û mehrûman** (ew feqîrê ku ji ber îffeta xwe nikare halê xwe erz bike) **heqekî dîyarkirî heye**."[273]

Li ser vî esasî zekat, ji malên ku ji miqdarê nîsabê zehftir bin tebabeke dîyarkirî bi baceke îlahî dike û pişka mayî jî helal dike. Bi vî awayî, ew malê ku wek zekat tê wergirtin, qism bi qism, derece bi derece ji bo meğdûrên cemîyetê tê guhastin û întîqalkirin. Bi xêra zekatê, serweta maldarî paqij dibe û di civakê de mûwazene, hevkêşî, edalet û ahenga civakî tê meydanê. Ji bo mirov di vê rastîyê bigihe, têrê dike ku hema mirov li vê ayeta pîroz binêre:

"**Ewên ku zekat dane** (jî paqij bûne û) **serfiraz bûne**."[274] Lewra peyva zekatê, bi maneya "paqijbûn"ê jî tê, di vê mijarê de ev jî caliba diqqetê ye.

273. Zarîyat, 51/19.
274. 'Ela, 87/14.

Zekat, deynekî biçûktirîn û hindiktirîn e ku Xudê Teala ew li ser zengînan bar kiriye. Haleveku bi îlawe li ser van di înfaq û sedeqeyan de ti rêjeyek nehatiye danîn û di hemberî vê de ji bo navtêdana maldaran jî sewaba di hemberê van de aynî wekî sewaba rojîyê bi dizî hatiye girtin. Cenabê Heq, ji ummetên ku bûrîne wek ferqdar û cuda cezayek tenê li seyyîatên (gunehên) ummeta Mûhemmed birriye û ji bo her hesenateke (amelekî salihê) wan jî deh sewaban dide. Bi îlawe li ser vê, hinek amel jî hene ku ji bo yekî ji wan heftsed sewab, heta ji vê jî hê zehftir jî ecir têne dayîn. Lêbelê digel miqdarê ecira rojîyê miqdarê ecira înfaqê jî ji bo teşwîqkirinê bi dizî hatiye girtin. Cenabê Heq, di ayeta pîroz de dibêje:

“(Ya Pêğemberê min!) **Sedqeyan ji malên wan bigre ku ew bi vê** (ji gunehan) **hatibin paqijkirin, temîz bûbin û hatibin bilindkirin. Û ji bo wan dûa bike! Lewra dûayên te, ji bo** (dilên) **wan sikûnet e** (serkehnîya hizûr û aramîyê ye).”[275]

Bi mûqtezaya vê ayeta pîroz du cîhetên zekat û înfaqê mijara axaftinê ne, lewra ew hem mal hem jî qelb temîz dikin.

Ellah Teala di ayetên pîroz de bi tehdîdeke îlahî wiha ferman dike, dibêje:

“**.. Ma ewên ku zêr û zîv li ser hev kom dikin û wan di rêya Xuda de înfaq nakin nîn in, ha ji wan re ezabekî jandar heye!**”[276]

“**Ew roj di agirê cehennemê de** (ev zêr û zîv ên ku wan kom kirine) **têne sor kirin û bi van enîyên wan, teniştên wan û piştên wan têne dağdan.** (Û ji wan re tê gotin:) **«Ha ev, ew serwet e ku we ji bo nefsa xwe kom kiribû. Êdî de** (ezabê) **tiştên ku we ew li ser hev kom kiribûn t‘am bikin ha!»**”[277]

Li gorî vê bicihbûna hezkirina ji mal di qelb de û di encama mezîyeta xwe ya înfaqê ya windakirina wî malî de heqê hewcedarî hatiye ğesbkirin. Bi îqaza herdu ayetên li jorê sabit e ku wê encameke ğemnak ji bo halên wiha mûcib bibe.

Li alîyê din sade ji bo du nîmetan tabîra “**fitne**”yê hatiye bikaranîn. Ev herdu nîmet jî “**ewlad**” û “**mal**” e. Digel hezkirina ji wan ewladan xeter heye

275. Tewbe, 9/103.
276. Tewbe, 9/34.
277. Tewbe, 9/35.

ku hezkirina ji mal jî di qelb de nifûz bike û hakimîyetê ji xwe re durust bike. Ji terefê Cenabê Heq ve ev xeter, bi vî awayî hatiye îfadekirin:

"**Bi rastî ewladên we û malên we ji bo we fitne'yek e** (wesîleya îmtîhanekê ne).."[278] Ew keyfîyeta ku nehêle ev bibin fitne, firênkirina hezkirina zêdeya ji wan e û nexistina wan ya di qelb de ye. Ji bo mirov karibe bi durustî ji fermanên îlahî yên wekî zekat, sedeqe û înfaqê re bibe peyrew bibe tab'î, divê mirov firsendê nede ku hezkirina tiştên dinyayî di qelb de koka xwe berde, bicih bibe û zanibe ku ew li dev mirovî "**emanet**"ek in.

Di vê mijarê de -li jorê me piçekê ew neql kirin- divê mirov li hemberî hişyarîyên îlahî baş bifikre û hewl bide ku bi îlawe li ser zekata ku ji çilan yek e, sedeqe û înfaqên zêdetir jî bide û ji miqdarê zekatê yê ferz derbas bibe.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

وَيَسْأَلُونَكَ مَاذَا يُنفِقُونَ قُلْ الْعَفْوَ.

"..**Dîsa ew ji te dipirsin; bila em di rêya qencîyê de çi înfaq bikin?** (Ji wan re) **Bibêje: «Ya ji îhtiyacê zêdetir înfaq bikin**.»"[279]

Zengînên şukirdar û comerd û feqîrên sebrdar û heysîyetmend di şerefa însanîyetê û rizaya îlahî de pevre ne. Lêbelê di Îslamê de zemma zengînên pozbilind û xesîs û li hemberî vî jî feqîrê bêsebr hatiye kirin, bi xirabî behsa van herduyan hatiye kirin ku di encamê de feqîrê bêsebr jî nikariye xwe ji îsyanê rizgar bike.

Zekat, ji bo maldar û serwetmendan îfadeyeke fiêlî ya şukirê ye. Peymana îlahî pê heye ku wê şukir jî nîmetê zêde bike. Ellah Teala di vê mijarê de ferman dike, wiha dibêje:

لَئِنْ شَكَرْتُمْ لأَزِيدَنَّكُمْ.

"..**Sûnd be ku heke hûn şukir bikin, ezê nîmetên xwe ji we re her zêde bikim..**"[280]

278. Teğabun, 64/15.
279. Beqere, 2/219.
280. Îbrahîm, 14/7.

Çawa Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji înfaqkirinê pirr hez dikir û ew teşwîq jî dikir. Wî, di hedîseke şerîfa xwe de wiha gotiye:

"*Ey kurê-însan! Tu înfaq bike ku înfaq ji te re jî were kirin.*"[281]

Mezinê me Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji dil û can arzû dikir ku ji bo mûmînekî comerdî bibe tabîatê esilî yê wî. Wî wiha digot:

"*Sade ji du kesan ğibte tê kirin. Yek ji wan ew kes e ku Xuda mal daye wî û ew muweffeq kiriye ji bo malê xwe di rêya heq de xerc bike; yê din jî ew kes e ku Xuda îlm daye wî û ew jî bi îlmê xwe amel dike û wî li dîgeran jî hîn dike (yanî îlmê xwe înfaq dike)..*"[282]

Bi kurtî însan, bi aferîna xwe, bi xulqîyeta xwe ji dinyayê re meyyal e, yanî meyldar e. Malê dinyayê jî ji nefsê re cazib û surdar tê. Ewên ku bi malê dinyayê hatibin xapîn êdî nizanin jê têr bibin. Însan çi qeder ji xwe re mal li ser hev kom bike, ew qeder hirs û çikûsîya wê zêde dibe, êdî ew dibe mûhteris, dibe hirsdar. Ew însanê ku madde û hirsa malî çavê wî nixumandibe jî têde hissa merhemet û şefqetê kêm dibe. Înfaq kirin, ji wî re zor tê. Nefsa wî jê re wiha dibêje:

"Hê zengîntir bibe; di pêşerojê de tu yê hê zehftir xêr û înfaqê bikî!" Wî bi van îğwayan (şîretên xapxapok) dixapîne. Însanê wiha be, çendan rehetîya çermê xwe, rehetîya bedena xwe bidest xistibe jî dîsa ew bi rûh û gîyanê xwe nexweş e. Çawa di bara mirovên wiha de hatiye gotin:

"*Ewên ku bibêjin; ezê sibê bikim çûne helakê!..*"

Ha zekat, ji bo nexweşîyên dilî yên her wekî haris û çikûsbûna ji bo malê dinyayê, derman e.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de dide zanîn; ew însanê ku mirin tê wî, ew di wextê mirinê de dibe wekî mirovê ku ji xew şîyar bibe û bi poşmanîyeke ebedî wiha dibêje:

رَبِّ لَوْلا أَخَّرْتَنِي إِلَى أَجَلٍ قَرِيبٍ فَأَصَّدَّقَ وَأَكُنْ مِنَ الصَّالِحِينَ.

281. Buxarî, Nefeqat, 1.
282. Buxarî, Îlm, 15.

"**Rebbê min! Heta demeke nêzîk mirina min dereng bixe da ku ez sedeqe bidim û ez ji salihan bibim!**"[283]

Di zekat û sedeqeyan de rîayetkirina edebê jî pirr giring e. Bi taybetî ewê ku zekatê yan jî sedeqeyan dide, divê ji zekatgir, yan jî sedeqe-wergirê xwe re di nav hissa teşekkurê de bibe. Lewra zekatgir wî ji deynekî li ser wî ferz, xilas dike û wî bi ecirê digihîne. Sedeqeyên ku têne dayîn, di heman demê de her yek ji wan ji bo wî kesê ku wan dide li hemberî nexweşî û mûsîbetan saîqa sîperê ye. Dema mirov sedeqe dide, divê mirov wê bi dilekî hessas ji hewcedarî re pêşkêş bike. Ji bo daxuyandina giringîya pêşkêşkirina sedeqê bi dilê hessas di ayetên pîroz de wiha hatiye gotin:

"**..Xuda sedeqeyan werdigre!**."[284]

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Nebin wekî wî kesê ku digel ew îmanê bi Xuda û roja axretê nayêne jî lê dîsa ji bo riyakarîyê malê xwe xerc dike, naxwe bi awayê minnet lê kirin û êşandinê xêrên xwe yên ku hûn dikin, pûç nekin!** (Sedeqeyên xwe îmha nekin!)."[285]

Hemû candar di milkê Xuda de dijîn û têde ji nîmetên wî jî rizqê xwe dixwin. Cenabê Heq, çengek axa li ser gurovera erdê, bi îstîhaleyeke (guherîneke) daîmî bi awayê ambareke xurekê bikartîne ku ew hijmareke bêdawî ya candaran xwedî bike. Di navbera hemû candaran de jî tekane heybera ku bi aqil û îz'anê mûcehhez însan e. Divê însan vê rastîyê bibîne ku Rebbê wî mûmîn-kafir, kare û nekar, hemû zindîyan têr dike û vêca ma ew bi xwe nahizire ka ew malê kê ji ber kê digre?

Cenabê Heq kaînat bi sebeb mehebbetê aferandiye û bi hurmeta vê mehebbetê jî wî gellek îkram, îhsan û lutf kirine. Lewra encama siriştî ya hezkirinê, fedakarî ye. Hezker, bi qasî hezkirina xwe ya ji hezkirîyê xwe fedakarî-kirinê wek zewq û wezîfeyekê teleqqî dike, werdigre. Ev hal, heta bi canê xwe dana aşiqekî ya di ber maşûqa xwe de jî dirêj dibe, diçe. Ew aşiq, bi vê hereketa xwe, heta xwe bi ber hissê ve jî bernade ku wî fedakarîyek kiriye. Naxwe ji bo Xuda, ew înfaqa ku ji mexlûqatên wî re hatibe kirin, ji hezkerî re li hemberî hezkirîyê xwe sipehîtirîn tezahureke mehebbetê ye.

283. Mûnafîqûn, 63/10.
284. Tewbe, 9/104.
285. Beqere, 2/264.

Li tenişta van îbadetên malî “**Hec**” jî li ser însanan hatiye ferzkirin ku ew hem îbadeteke malî ye, hem jî ew îbadeteke bedenî ye. Hec îbadeteke ulwî ye ku ew ji sîlsîleya pêğemberan yê pêşîn Adem -eleyhisselam- heta bi pêğemberê axir zemanê terennumên dilên şewitî û bi curecur bîranên ulwî cewhera îmanê di dilan de bi kemalê digihîne û hê li vê alema dinyayê dîmeneke wekî mehşerê bi însanan dide jîyandin û ji bo gihandina wan bi sirra:

«مُوتُوا قَبْلَ اَنْ تَمُوتُوا», yanî “*berî hûn bimrin, bimrin!*” wesîle ye.

Îbadeta hecê, gellek hikmetên dinyayî û axretî yên wê hene. Heceke rastîn, îbadeteke mûhteşem û mûbarek e ku bi tecellîya rahma bêdawî ya Xuda, ew mislimanên ku ji ef û meğfîreta Xuda re bi mezher bûne, di nav heyecana îman, evîn û wecdeke kûr de bi hev û din ve dikelijin.

Hec, ev e ku însan hewl dide, cilên hebûn û nefsê ji xwe bike, nifûzê li kûrahîya rûh bike, dilê wî pê bi hizûr û aramîyê digihe û xwe ji bager û bahozên nefsanî rizgar bike.

Hec îbadeteke ji tezahurên rûhanîyetê tije ye ku însan, ahenga rûhê xwe, keş û hewaya xwe û rengê xwe têde dibîne, nasnameya esilî ya xwe qezenc dike, qelbê wî bi barana feyzên manewî temîz û paqij dibe.

K‘abeya mûezzama qibleya mûmînan e, Cenabê Heq di Qur’ana Pîroz de bi gotina xwe:

“**Here sicûdê û nêzîk bibe**!”[286] ferman kiriye ku mûmîn di îbadeta nimêjê de berê xwe bidinê, tabî hedef jê îstîqamet e. Qelb, di bedena însanî de çi be, K‘abe jî li kaînatê di wê mesabeyê de ye. Qelb, çawa tecellîgeha feyzên heq be, her wiha K‘abe jî tecellîgeha feyzên Xuda yên li ser bendeyên wî û yên li ser cîhanê ye. Naxwe K‘abe qelbê kaînatê ye. Di heman demê de ew nuqteya hevbeş e ku hemû misliman pevre berê xwe didinê, yanî K‘abe ew cih e ku nebza dinyaya Îslamê li wir tê avêtin. Bi vê sebebê hec, îbadetek wisan mûhîm û îtîna-xwaz e ku divê însan îhtîşama K‘abê îdrak bike û divê ew bi qelbekî hessas were edakirin.

Hec bi programa xwe, berê însanî dide ser hessasîyetên qelbî. Lewra ev îbadeta nazik, bi tezahurên şefqet, merhemet û mehebbetê yên wekî neêşandina mexlûqatên Xuda tije ye.

286. Elaq, 96/19.

Hec, di nav îhramên cilsipî de hewldana para xwe wergirtina ji letafeta melaîleta ye. Divê însan di îhraman de nêçîrekê neke. Divê însan bi qesd gîyayekî heta mûyekî jî jêneke. **Li wir refes nîn e, fisq nîn e, cîdal nîn e**..[287] Sade ji bo xatirê Aferînerê wan ji aferîndeyan re şefqet, merhemet û nezaket heye.

Divê însan jibîr neke ku mirin, çarenivîseke mûtleq û mûşterek e ku hemû candar bivên-nevên mecbûr in wê t'am bikin. Zemanê wê, deqîqeya wê û heta bi hijmara nefesên wê hatine tayînkirin û bi hukmekî ve hatine girêdan. Heqîqeteke tam eşkere ye ku teqdîm û texîra ecelî bi şîyan û qudreta beşerî ne mûmkin e û di bara xilasbûna mirovên ku ji ecelê xwe direvin de jî ti xeberek nehatiye bihîstin. Naxwe ew mirovên ku îmkanên wan hebin û karibin herin hecê, bila vê baş bifikrin û di mijara îfakirina îbadeta xwe ya "hec"ê de bi tundî xwe ji sistahî û laqeydîyê biparêzin. Heke na, ewê bi vê îxtar û pêşagahîya dehşetdara Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-re rûbirû bimînin:

"*Ew kesê ku mesrefa xwarin, vexwarin û merkeba wî hebe û karibe here Beytûllah'îyê û lê neçe hecê, êdî ji bo mirina wî ya wek cihû, yan jî krîstîyan hîç ti astengek nîn e!*"[288]

Ev îqaza pêğemberî, di pêşîya pêşîn de wan mirovên ku ji bo çûna hecê hemû şertên wan hene lêbelê dîsa bi sebeb ğefleta xwe naçin hecê û vê îbadetê îhmal dikin, agahdar dike ku ewê di nav zîyaneke ğemnak de bibin û ewê ezabê îlahî jî biçêjin.

Bêgane mana mislimanan ji îbadeta hecê ya ku ewê wan ji gunehan paqij bike û qelbên wan jî tesfîye bike, çi ğeflet, ğemsarî û jidestdaneke mezin e!..

Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ferman dike, dibêje:

"*Her kî bi nîyeta hecê were vê K'abeya Mûezzam, fisq û refesê neke û heca xwe bike, wekî ji dêya xwe bûyî wisan wek bêguneh û tertemîz vedigere mala xwe.*"[289]

287. Li Sûretê Beqere, ayeta 197'an binêrin. **Refes**: Kirina mûnasebeta cinsî ye, gotina peyvên bi vê mijarê re elaqedar e û heta gotina her cure peyvên ku bi vê maneyê tên e. **Fisq**: Fiêlên her cure gunehan e. **Cîdal**: Mûnaqeşe û devjenîyên nepêwîst in.
288. Tirmizî, Hec, 3.
289. Mûslim, Hec, 438.

### e- Îhyakirina/Sağkirina Şevan

**Ji wê şerabê dagire, dîsa tije bike, dîsa pêşkêş bike!**
**Bila şev raweste, ey dost! wê rawestîne, çi dibe vê bike!**
**Xewa min zincîr bike, zincîr bike, bila wext derbas nebin.**
**Ewên ku razabin ferqê naxine şevê, ferqê naxine şevê!**

Heke însan karibe tenahî û sikûneta şevê lixwe bike, hingê ewê karibe berê xwe bide ser dinyaya hundurîna xwe û dîsa ewê karibe siqlet û giranbarîyên maddî û manewî yên xwe ji ser xwe bavêje. Lewra roj, ji dana îstîraheta rûhî û sihhî ya şevê, dûr in. Ji bo mirovên ku nîmeta şevan nizanibin, hizirîna xêra rojê jî ne mûmkin e.

Ji bo însan karibe bikeve manzarayên îlahî û manewî yên şevê, mecbûrîyeta biğaye û ermancdar bikaranîna wê heye.

Ji bo ehlê dil zemanekî ji sikûneta şevê bifeyztir nabe. Naxwe îcab dike mirov miqdareke diyarkirî ji şevan şîyar bibûrîne û ji feyz û bereketa wan îstîfade bike. Cenabê Heq, di vê mijarê de di ayetên pîroz de wiha ferman dike, dibêje:

تَتَجَافَى جُنُوبُهُمْ عَنِ الْمَضَاجِعِ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ خَوْفاً
وَطَمَعاً وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنفِقُونَ.

“(Ew kesên mûtteqî ji bo bi şevan nimêj bikin û îstiğfaran bikin) **Teniştên xwe ji nivînên** (şîrînên) **xwe radikin û dûr dikin.. Bi tirsa ji ezabê Rebbê xwe û bi hêvîya ji rahma wî dûa dikin** (miradên xwe dixwazin û lavlavan jê dikin)**. Hinekî ji wî rizqê ku me daye wan jî di rêyên xêrê de înfaq dikin**..”[290]

“**Di beşeka şevê de ji Wî re here sicûdê! Di beşeka dirêja şevê de jî Wî tesbîh bike!**”[291]

Qedr û qîmetê ku Cenabê Heq bi şevê daye û ew sirrên ku têde bicih kirine, bêjimar in. Rebbê me di vê mijarê de bi raweya sûndê dibêje: “«**Bi şevê û bi her tiştên ku tarîtî wan dinixumîne sûnd be ku..**»”[292]; “«**Bi şevê dema**

290. Secde, 32/16.
291. Însan, 76/25-26.
292. Înşîqaq, 84/17.

**ew bi aramîyê digihe sûnd be ku..»**”[293]; “«**Bi şevê dema ew tarî dibe û bi sibehê dema ew dertê sûnd be!**»”[294] sirra di raweya sûndê de pencereyeke îlahî ye, hatiye vekirin ji bo çendîn heqîqetan bi îdraka me û dilên me bide temaşekirin.

Şev ji bo mûmînên ku bi kemalê gihabin, ji ber sikûnet û feyza di derûna wan de ğenîmeteke mûstesna ye. Naxwe ew kesên ku bi durustî qedr û qîmetê vê ğenîmetê zanibin -bi taybetî di piştî nîvê şevê de- di wê dema ku hemû mexlûqat dikevin îstîrahetê û sikûneteke kûr alemê dinixumîne de, wê ji xwe re bifeyztirîn zemîn dibînin ji bo ew bi dûa, îbadet û îltîcayên şewitî berê xwe bidine Rebbê xwe..

**Hezretê Mewlana** evîn û wecda ku di şevan de dijîya, di *Dîwana Kebîr*a xwe de wiha di malikan de rijandine:

*Meyger! Qedehê bi evîna îlahî tije bike!*
*Ji xeberdana nan dana bi mestaneyî dûr bisekine!*
*Kewserê pêşkêş bike, bila dilên teşne jê têr vexwin,*
*Ma zindîyê ku di deryayê de avjenîyê dike, ji bilî avê çi dive.*
*Ji wê şerabê dagire, dîsa tije bike, dîsa pêşkêş bike!*
*Bila şev raweste, ey dost wê rawestîne, çi dibe vê bike!*
*Xewa min li zincîran bixe, lê bixe, bila wext derbas nebin.*
*Ewên ku razabin ferqê naxine şevê, ferqê naxine şevê!*

Cenabê Heq, di mijara şiyar derbaskirina şev û seheran de bi eşkerehî dibêje; ewên ku xwe ji wî diparêzin dê ji bo nîmetên îlahî bi mezher bibin û di bara wan bendeyên bextiyar ên ku medhê wan dike de jî ferman dike, wiha dibêje:

كَانُوا قَلِيلاً مِنَ اللَّيْلِ مَا يَهْجَعُونَ, وَبِالأَسْحَارِ هُمْ يَسْتَغْفِرُونَ.

“**Ew mûtteqî, bi şev zehf hindik radizin û wan di wextên seheran de jî li ser îstiğfaran berdewam dikir**.”[295]

293. Dûha, 93/2.
294. Tekwîr,81/17-18.
295. Zarîyat, 51/17-18.

“(Ew bendeyên Rahman ku) **Li hizûra Rebbê xwe li ser pêyan radiwestin, diçin sicûdê û şevên xwe îhya dikin.**”[296]

Cenabê Heq, di ayeteke din de jî wiha dibêje:

“(Ya Resûlê min!) **Xuda, dema tu** (bi şev) **radibî** (nimêjê) **û dema tu di navbera secdebiran de digerî jî, her te dibîne.**”[297]

**Qadî Beydawî** di bara vê ayetê de wiha dibêje:

“Dema pênc wext nimêj li ser ummetê ferz bûn û nimêja şevê jî bû sunnet, Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo mûşahedekirina rewşa sehabîyan wextê şevê ji hucre’ya seadeta xwe derketibû derve, di navbera malên sehabîyan de gerîyabû, ew mal dîtibûn ku wa ye bi tîlaweta Qur’anê û dengên zikr û tesbîhan wekî ‘immênîya kuwarên mêşan dengê ‘immênîyê ji wan tê..”[298]

Cenabê Heq, bi zikrê ku bi şevê di wextê seheran de tê îfakirin, ji zikrê ku di wextên dîger de tê îfakirin, hê bêhtir qîmet dide. Lewra di wextên seheran de meşğûlbûna bi zikr û îbadetan ji wextên dîger zortir e. Bi vê sebebê îhyakirina seheran, îfadeyeke xalîsane ya mehebbet û tazîmê ye ku bende li hemberî Rebbê xwe hestpê dike. Evîn û hezkirina îlahî di dilê bendeyî de çi qeder xurt be, bêşiwar reğbet û dilxwazîya wî ji bo nimêja şevê û tesbîhatan jî ew qeder tezahur dibin. Bi vê nêrînê jî nimêja şevê û tesbîhatên wê -adeta- mahîyeta hevdîtina bi yar û sohbet-kirina pê re hildigre. Naxwe di wê dema ku herkes radize de şîyar bûn, maneya wê dibe ev; mirov dibe yek ji wan bendeyên cihêwaz û mûstesna yên ku dikevin keş û hewaya rahma Mewla’yê Mûteal û di dîwana meğfîret, mehebbet û marîfetê de pişkdar dibin.

Heke mûmînek bikare şevê biğaye bikarbîne û ew karibe ji rûhanîyeta zikrê yê di seheran de para xwe wergire, hingê ji hêla maneyî ve şeva wî ji roja wî rohnîtir û bixêrtir dibe. Lêbelê ew şeva ku bê ğaye û wek ji xewê re mehkûm hatibe derbaskirin jî wekî wê baranê ye ku li ser kevir, derya û çolê dibare, bêfeyde ye û windahîyeke ku telafîya wê jî zehf zor e. Naveroja şeveka wiha jî ji hêla maneyî ve tarîtî ye.

296. Furqan, 25/64.
297. Şûera, 26/218-219.
298. Enwarut-Tenzîl, IV, 111.

Rûhanîyeta tewhîdê ya ku di seherê de destpê dike, heke ew dorê li rojên me û dilên me bigre, hingê nefesa dawîna me jî, yanî ew mirina ku maneya wê xatir-xwestina ji her tiştên li dinyayê ye, înşaellah wê bi kelîma tewhîdê bi "şeva 'arûsê"[299] wergere.

Ebdûllah bin 'Amr bin 'As -radîyellahû anhû- rîwayet kiriye, gotiye; pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ez wiha şîyar kirim, ji min re got:

"*Ya Ebdûllah! Wekî filan keso nebe! Lewra wî li ser kirina nimêja şevê dewam dikir, êdî ew bûye ku ranabe.*"[300]

Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- ji eshabê kîram re axivî, got:

"*Li îbadeta şevê miqate bin! Lewra ew kevneşopîya kesên salih ên ummetên berîya we ye. Bêşiwar rabûna îbadeta şevê, ji bo nêzîkbûna ji Xuda wesîle ye. (Ev îbadet) Gunehan asteng dike, ji xeta'yan re dibe kefaret û derdan ji bedenê dibe.*"[301]

Ji hêla tibbê ve hatiye îsbatkirin ku bi xewê nebûrandina temamê şevê û bi rabûnê navber dana xewê ji bo sihheta bedena însanî pirr giring e. Bi rastî ewên ku ji xeweke dirêj şîyar dibin, ji serêşê mûzderib û gilehkar dibin. Ev jî, encama vê rastîyê ye ku nefes dan-standin sist dibe û mejî bi tebabeke têrker xureka xwe ji oksîjenê wernagire. Lêbelê ewên ku xewê dabeş dikin, ji ber ku bi bizavên fiêlî nefes dan û standin bi asayî û normal kirine, ew digel xeweke hindik jî ji nav nivînên xwe zindetir radibin.

Li alîyê din nexasim di nav yextiyar û navseran de mirin, bi zehftir berbanga sibehê pêktê. Ji ber vê doktor "wextê seherê" bi "saeta mirinê" binav dikin. Sebebê vê jî di saeta kûrtirîna xewê de xebata dil sist û bi hêdî dibe. Ewên ku di vê saetê de şîyar dibin, ji xwe nexasim heke ew bi ava sar jî desmêj bigrin, dibin ku temamê fonksîyonên wicûda xwe bi asayî û normal kirine.

Fermanên dînî heke çi qeder werin eşkerekirin ku ew ne ji bo van cure feydeyên dinyayî ne; lêbelê bi meqsûda bicihanîna evdînîyê ji Xuda re hatin

299. Şeva 'arûsê: Şeva wusleta îlahî.
300. Buxarî, Teheccud, 19; Mûslim, Siyam, 185.
301. Tirmizî, Deawat, 101.

kirin jî dîsa di her yekî ji wan de feydeyên dinyayî yên wiha jî hene. Di îbadetên wekî nimêj û rojîyê û yên wekî wan de jî hikmet û feydeyên bêhijmar ên dinyayî yên wiha hene. Lêbelê bi tabîatê xwe sebebê hebûna wan îbadetan ne ev feyde ne, naxwe her feydeyek ji wan di mesabeya tesîra wan ya kêlekê de ye.

## f- Zikrûllah û Mûraqebe

**"Qelb, bes bi zikrûllah bi îtmî'nanê digihin."**[302]

Peyva "însan"î li gorî dîtin-nêrînekê ji koka "nîsyan"ê tê. Herçî nîsyan e, ew jî dijbera zikrê (bîranînê" ye û ew jibîrkirinê îfade dike ku ev jî yek ji mezintirîn lawazîyên kurê-însanî ye. Ev heqîqet, di navbera gel de bi vê derbûmeselê hatiye îfadekirin; "hafîzeya beşer, bi nîsyanê malûl e." Bêşiwar rêya bingehîna tinekirina afeta nîsyanê jî zikr e.

Ji bo însan karibe bi meqsûda aferîna xwe re ahengdar bijî, îcab dike mirov ji wê peyman û mîsaqa ku di "Bezma Elest"[303] de bi Rebbê xwe re daye sadiq bimîne û Aferînerê xwe ji bîra xwe û dilê xwe hîç nederîne. Ha bi vê sebebê, ji bo telafîya zirarên ku ji wê "nîsyan"ê dizên, ku ew bi awayekî fitrî û aferînî di însanî de mewcûd e, berî her tiştî îhtiyac bi "zikr"ê heye da ku mirov daîmî li hemberî "Xuda" "evdînî"ya xwe îdrak bike û wê di bîra xwe de zînde bigre.. Lewra her tekrar, cihê tiştê ku hatiye tekrarkirin di îdrak û îz'anê de xurttir û bihêztir dike.

Cenabê Heq, li pêkhatina sûret û şekl û şemalê însanî nanêre lêbelê ew li qelbê wî dimeyzîne. Bi vê nêrînê her mûmîn, divê qelbê xwe ku nezarên îlahî têde tecellî dikin, ji ğefletê biparêze û meşğûlbûna bi zikrê jî ji bo xwe erk û wezîfe zanibe.

Zikr bi sebeb giringîya taybetî ya xwe di nav wezîfeyên evdînîyê de, peyva zikrê ji dused û pêncih caran bêhtir di Qur'ana Mecîd de derbas dibe. Zikr çi qeder di qelb de cih ji xwe re qezenc bike û di hisskirina wî de kûrahîyê qezenc bike ew qeder wê însan karibe bi maneyeke rasteqîne evdînîyê ji

302. R'ad, 13/28.

303. **Bezma Elest** (Civîna Ezelîya Rûhan): Ellah Teala di alema rûhan de ji wan pirs kiribû:
"**-Ma Ez ne Rebbê we me?**" Hemû rûhan jî bersiva wî dan jê re gotin:
"**-Belê, Tu Rebbê me yî!**" Rûhan bi vê bersiva xwe Ribûbîyyeta Cenabê Heq iqrar kirin. Li Sûretê 'Eraf, 7/172 binêrin.

Cenabê Heq re bike û bi vî awayî jî ewê bi marîfetûllahî'yê bigihe. Ji lewma "marîfetûllah" yanî bi qelbê xwe nailbûna ji bo Rebbê xwe bifezîlettirîn îlm hatiye jimartin. Lewra esil agahîya ji însanî re lazim ev e.

Cenabê Heq, ji bo bendeyên wî ji zikrê wî ğafil nebin, di hinek ayetên bi vê mijarê re elaqedar de wiha gotiye:

أَلَمْ يَأْنِ لِلَّذِينَ آمَنُوا أَنْ تَخْشَعَ قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللّٰهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّ.

"**Ma ji bo wan mirovên ku îman anîne, dema wê nehatiye ku dilên wan bi zikrê Xuda û bi heqîya ku hatiye xwarê bilerize, bitirse?**"[304]

"**Zikr kirina Xuda; helbet** (îbadetê) **mezintirîn e**."[305]

"**Hûn min zikr bikin, ez jî yê we zikr bikim. Ji min re şukir bikin, nankorîyê nekin!**"[306]

Heta dema Cenabê Heq, Mûsa û Harûn -eleyhimasselam- ji bo teblîğê dişandin cem Firewn:

"**Tu û birayê xwe pevre ayetên min bibin, herin. Hûn herdu jî min bînin bîra xwe, di bîranîna min de sistahîyê şanî nedin**."[307] Bi van ayetan ferman kiriye ku ew ji zikrê wî ğafil nemînin.

Zikrkirina Xuda, hîç şubhe nîn e ku ne sade dubarekirina lefzê Xuda bi serê zimanî ye, lêbelê cihê xwe dîtina wî di qelb de ye ku her ew e, merkeza tehessusê.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

"*Nimûneya kesê ku zikrê Xuda dike û kesê ku zikrê Xuda nake, wekî nimûneya kesê sağ û kesê mirî ye.*"[308]

"*Elametê hezkirina ji Xuda, hezkirina ji zikrê Xuda ye.*"[309]

304. Hedîd, 57/16.
305. 'Enkebût, 29/45.
306. Beqere, 2/152.
307. Taha, 20/42.
308. Buxarî, Deawat, 66.
309. Suyûtî, el-Camîus-Seğîr, II, 52.

Çawa ew kesên ku ji zikrê dûr bin, ji ber ku ew ji hezkirina Xuda jî dûr in, di bin gefa îlahî de ne. Xudê Teala, di ayeta pîroz de dibêje:

“**Xwelî li wan kesan be ku di bara zikrkirina Xuda de dilên wan hişk û hola bûne!**..”[310]

Ji bo mirov ji ber vê tehdîdê salim bifilite, lazim e ku mirov tim û daîm di halê zikrê de bibe. Cenabê Heq, vê xusûsê wiha eşkere dike, dibêje:

“**Di dilê xwe de, bi zara-zar, bi tirs û bi dengekî nebilind, sibeh û êvarê Xudayê xwe di bîra xwe bîne û nebe ji ğafilan!** ”[311]

Dîsa Cenabê Heq di ayetên pîroz de bi meqsûda îfadekirina xetera/tehlûkeya dûrketina ji zikrê wiha dibêje:

“**Kî ji zikrkirina** (Xudayê) **Rahman ğafil bibe, emê şeytanekî ku hîç ji cemê cuda nebe, li ser wî mûsellit bikin.**

**Bêşiwar ev şeytan, wan ji rêya rast vedigerînin û ew jî xwe li ser rêya rast zen dikin.**

**Ew kesê ku dostê şeytan be, paşê dema ew** (ji bo hesabê bidin me) **tê bal me, ji hevalê xwe re dibêje: «-Xwezî di navbera min û te de bi qeder rojhilat û rojava dûrahî hebûya! Meger tu çi hevalekî xirab î!.**»”[312]

“**Kî berê xwe ji zikrê min vegerîne, bêşiwar heqê wî debareke teng e û em wî roja qiyametê wek kor heşr dikin. Ew** (wê demê ji me re wiha) **dibêje:**

**«-Ya Rebbî, te ez çima wek kor heşr kirim? Haleveku ez berê kesekî bîner bûm.»**

**Vêca Ellah Teala** (jî jê re wiha) **dibêje:**

**«-Erê wisan bûye.** (Lêbelê li dinyayê) **ayetên me ji te re hatibûn û te jî ew jibîr kiribûn. Ha îro tu jî dê wisan werî jibîrkirin**.»”[313]

Exlaqê xweş û xeslet bes ji wan kesan re hene ku ji Cenabê Heq ditirsin, zehf ji wî hez dikin û wî pirr di bîra xwe tînin. Ellah Teala di vê mijarê de ferman dike, wiha dibêje:

310. Zumer, 39/22.
311. ‘Eraf, 7/205.
312. Zuxruf, 43/36-38.
313. Taha, 20/124-126.

"**Heft asîman, erd û her tiştên ku di navbera wan de hene** (tev) **Wî tesbîh dikin, pakdidêrin. Hîç tiştek nîn e ku bi hemdê Wî tesbîh neke... Lêbelê çi heye hûn, di tesbîhên wan nagihin! Ew, helîm e, efûkar e**."[314]

❁

Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- jî di hedîseke qudsî de di bara fezîleta zikrê û zikrkaran de wiha ferman kiriye, gotiye:

"*Ellah Teala dibêje:*

*Ez bi bendeyê xwe re bi zena wî ya di bara min de mûamele dikim. Naxwe dema ew min di bîra xwe bîne (zikr bike) ez pê re me. Heke ew di dilê xwe de min zikr bike, ez jî yê wî zikr bikim. Heke ew di nav civakekê de min zikr bike, ez jî yê wî di nav civakeke ji wê civaka wî bixêrtir de zikr bikim*."[315]

Dîsa rojekê Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- ji eshabê kîram re diaxivî, ji wan pirs kir, ji wan re got:

"*-Ma ez amelên we yê ji her amelam çêtir, yê li cem Xudayê we ji her amelan paktir, yê dereceya wî ji her dereceyan bilindtir, yê ji sedeqe dana we ya zêr û zîv bixêrtir û yê ji cîhada ku hûn û neyarên xwe werin hemberê hev, vêca hûn li stûyê wan bidin û ew jî li stûyên we bidin hê bixêrtir ji we re bibêjim ew çi ye?*."

Wan jî jê re got:

"-Belê, ji me re bibêje, ya Resûlellah!"

Vêca Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

"*Ew zikrkirina Xuda ye*."[316]

Çawa însan dikare zikrê Xuda bi ferdî bike, aynî wisan ew dikare zikrê Xuda bi komel jî bike. Çawa Mûawiye -radîyellahû anhû- li mizgeftê hate cem cemaetekê ku bi awayê heleqeyê rûniştibûn û ji wan pirs kir, ji wan re got:

"-Hûn çima li vir kom bûne?"

Wan jî bersiva wî dan, jê re gotin:

314. Îsra, 17/44.
315. Buxarî, Tewhîd, 15.
316. Tirmizî, Deawat, 6.

“-Em ji bo zikrê Xuda bikin, kom bûne.” Wî jî dubare ji wan pirs kir, ji wan re got:

“-Ji bo Xudê rast bibêjin. Hûn li vir sade ji bo Xuda zikr bikin, rûniştine?”

Wan jê re got:

“-Erê, em sade ji bo vê meqsûdê rûniştine.” Vêca Mûawîye -radîyellahû anhû- ji wan re wiha got:

“-Ne ji ber ku ez bi peyva we bawer nebûm min hûn dane sûndê. Yekî wekî min nîn e ku bi qeder min ji Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- nêzîk be û ji min hindiktir hedîs jê rîwayet kiribin. Rojekê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- hate cem sehabîyên ku bi awayê heleqê rûniştibûn û ji wan pirs kir, ji wan re got:

«-*Hûn çima li vir rûniştine?*»

Wan jî bersiva wî dan, jê re gotin:

«-Ji ber ku Xuda Îslamîyet ji me re bi nesîb kiriye, wî lutfeke mezin li me kiriye, vêca em jî rûniştine ji bo Xuda zikr bikin û jê re hemdê bikin.»

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan pirs kir, ji wan re got:

«-*Ji bo Xuda rast bibêjin. Ma bi rastî hûn li vir rûniştine, sade ji bo hûn Xuda zikr bikin?*»

Wan jî jê re got:

«-Erê, sade em ji bo vê meqsûdê li vir rûniştine.”

Vêca Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

«-*Min ne ji ber ku ji we bawer nekir min hûn dane sûndê. Lêbelê Cebraîl hate cem min, ji min re xeber anî ku Ellah Teala li cem melaîketan bi we îftîxar dike ji lewma min wiha got.*»”[317]

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di mijara perwerdeya qelbî de bi qeder îstîdad û amadekarîya eshabê kîram talîma zikrê dida wan. Ev axaftina ku di navbera wî û Ummû Hane’ê de derbas bûye, ji bo

317. Mûslim, Zikr, 40.

vê çi dibe nimûneyeke sipehî. Ummû Hane'ê ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kir, jê re got:

"-Ya Resûlellah! Ez yextiyar bûm, ez lawaz bûm. Şîreta îbadetekê li min bike ku ez karibim li cihê lê rûniştî bim, wê bikm?

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

"*-Sed caran «subhanellah»,*

*Sed caran «elhemdûlillah»,*

*û sed caran «la îlahe îllellah» bibêje!*"[318]

Di navbera zikran de jî ji bo bi kom zikrkirina kelîma tewhîdê cihekî taybetî heye. Çawa ev hedîsa ku ji sehabîyan Şeddad bin Ews -radîyellahû anhû- rîwayet kirî jî vê xusûsê îşaret dike, dibêje:

Di navbereke ku em li cem Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de bûn, wî ji me pirs kir, ji me re got:

"-Ma di nav we de yekî biyanî heye?" Wî bi "biyanî"ya li vir, Ehlê Kitêban (krîstiyan û cihû) qesd kiribûn.

Me jî jê re got:

"-Ne xêr, nîn e, ya Resûlellah!"

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ferman kir ku em derîyan bigrin û ji me re wiha got:

"*-Destên xwe rakin û **La îlahe îllellah** bibêjin!*"

Şeddad bin Ews -radîyellahû anhû- berdewamîya vê dîwana zikrê wiha vedibêje:

"-Me mûddetekê wekî ku hatibû gotin destên xwe rakirin û (me bi gotina; **la îlahe îllellah**) zikr kir. Di pey de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- destên xwe danîn û wiha dûa kir, got:

*«-Xudayê min, hemd ji te re be! Rebbê min, te ez bi vê "hevokê" şandim û te ew (bicihanîna wê) li min ferman kir. Li hemberî vê te soza cennetê da min. Tu, bi ti awayan ji soza xwe venagerî!»*

318. Îbnû Mace, Edeb, 56; Ahmed bin Henbel, Mûsned, VI, 344.

Paştir pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji eshabê xwe re wiha got:

«-*Mizgînî ji we re be! Bêşiwar Xuda hûn efû kirin.*»"[319]

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa dîtira xwe de jî wiha dibêje:

"-*«**La îlahe îllellah!**», peyvek e ku cih û bihayê wê li cem Xuda pirr mezin e. Kî, wê bi îxlas û sedaqeteke temam bibêje, Xuda dê wî bixe cenneta xwe. Kî jî digel ku wê bawer nake jî wê sade bi zimanê xwe bibêje, canê wî û malê wî tê parastin; lêbelê dema ew sibehê bigihîje Xuda, dê Xuda hesabê wî bibîne.*"[320]

Ev hedîsa şerîfa ku her demê lazimîya daîmî ya bûna di hesta zikrûllah û mûraqebê de îfade dike, caliba diqqetê ye:

"*Xuda jibîr nekin û xwe di axaftinê nelazim de noq nekin. Lewra jibîrkirina Xuda û axaftina gellek, dil hişk û hola dike. Ewê ji her kesî bêhtir ji Xuda dûr jî ew kes e ku qelbê wî hişk e.*"[321]

Wekî ku hate dîtin zikrûllah, ji terefê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi xwe ve bi gellek wesîleyan hatiye talîm, teşwîq û telqînkirin. Naxwe dûr-mana ji vê îbadetê ku ev qeder hatiye terwîckirin çi windahîyeke mezin e û heke ew bi durustî were edakirin jî li hemberî nîmetên uxrewî yên ku însan bi wan bigihe jî, çi mehrûmîyeteke ğemnak e.

Bêşiwar em li vê jîyana dinyayê çi qeder zehf û bi çi pîvaneke kûr Rebbê xwe hiss bikin û wî wisan di bîra xwe bînin, emê sibê li axretê jî ew qeder bi wusleta îlahî bigihin.

Hezker, bi qeder hezkirina xwe ya ji hezkirîyê xwe hest bi bîranîna wî dike. Li alîyê din ew dibîranîn jî, hezkirina ji hezkirîyî hê zêde dike. Ewên ku para xwe ji helaweta (şîrînî û lezzeta) îmanê werdigrin jî çi qeder di vê îstîqametê de merheleyan qut bikin, bi qeder îştiyaqa wan ya ji Cenabê Heq zikrkirinên wan jî zêde dibin. Ji hêla tetmînkirinê ve jî di navbera îştahên nefsanî û îştahên rûhanî de jî ferq heye: Çi qeder îştahên nefsanî yên wekî xwarin û vexwarinê tetmîn bibin û vemirin, îştahên rûhanî jî ew qeder zehf û

319. Ahmed bin Henbel, Mûsned, IV, 124.
320. Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, I, 26.
321. Tirmizî, Zuhd, 62.

zêde dibin. Ev, ji bo birina têhna xwe adeta dişibe vexwarina ava şor. Her ava ku tê vexwarin, îştahê hineka din jî zêde dike.

Ewên wiha di her hal û firsendê de daîm di halê zikrê de dibin û xwe di hikmetên hûr û zirav ên aferîna erd û asîmanan de noq dikin, wiha tefekkur û nîyaz dikin, dibêjin:

“**..Ya Rebbî! Te ev pûç û abes neaferandine; em te pak didêrin. Me ji ezabê cehennemê biparêze!**”[322]

Rêya dan dewamkirina jîyana xwe bi îman û îtmî’nanê, gihiştina neşwe û sefayên îlahî û di dawîyê de jî bi îmaneke kamil gihiştina Heqq di zikrê daîmî re derbas dibe. Lewra însan çawa bijî wisan dimre û ew li ser çi halî bimre, li ser wî halî tê heşrkirin jî. Çawa Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsên şerîf ên xwe de dibêje:

“*Însan, wê roja qiyametê li ser wî halê ku li serê miribin, werin sağkirin.*”[323]

“*Însan li ser çi halî dijî, li ser wî halî dimre û li ser çi halî miribe jî li ser wî halî tê heşrkirin.*”[324]

Hîç tiştek, bi qeder îştiyaqa însanî ya ji bo tehessus û tefekkurê, bi dereceya waqifbûna wî ji hebûna hakim û nazimê kaînatê, Cenabê Wacîbû’l-Wicûd û hezkirina ji wî ji bo tetmînê bi medar nabe. Lewra çawa di ayeta pîroz de hatiye gotin:

أَلا بِذِكْرِ اللَّهِ تَطْمَئِنُّ الْقُلُوبُ.

“**Bila xebera we jê hebe ku qelb, bes bi zikrûllah bi îtmî’nanê** (hizûra rasteqîne) **digihin**.”[325]

322. Alî Îmran, 3/191.
323. Mûslim, Cennet, 83.
324. Mûnawî, Feyzû’l-Qedîr, V, 663.
325. R‘ad, 13/28.

## g- Mehebbeta Ji Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- û Selewatên Şerîf Li ser Wî

**"Bêşiwar Xuda û melaîketên wî zehf selewatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî selewatan li ser wî bidin û bi teslîmîyeteke tam silavê li wî bikin."** [326]

Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- xarîqeyeke aferînê ye, ne mûmkin e ku em karibin di îstîdad û taqeta beşerî ya xwe de bi tekûzî fehm bikin. Întîba û çavdêrîyên ku di vê alemê de hatine girtin di îzahkirin û îdrak-kirina wî de bêkîfayet dimînin. Çawa ne mûmkin e ku mirov pehnav û ummanekê bixe îstîkanek av, aynî wisan bi durustî îdrak-kirina Nûra Mûhemmedî jî ne mûmkin e.

Cenabê Heq, di ayeta pîroz de vê heqîqetê wiha îfade dike, dibêje:

إِنَّ اللَّهَ وَمَلائِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى النَّبِيِّ يَا أَيُّهَا الَّذِينَ
آمَنُوا صَلُّوا عَلَيْهِ وَسَلِّمُوا تَسْلِيماً.

"**Bêşiwar Xuda û melaîketên wî zehf selewatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî selewatan li ser wî bidin û bi teslîmîyeteke tam silavê li wî bikin.**"[327]

Bi mûcibê fermana îlahî ya di vê ayeta pîroz de, selat û selam dana li ser Fexrê Kaînatê mecbûrî ye. Ev yek ji wan edeban e ku Cenabê Heq ji temamê ummetê xwestiye û li wan ferman kiriye ku ew li hemberê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi wê fermanê ve bend bin, pêgir bin. Nêzîkbûna ji fedl û kemala wî Pêğemberê Mezinê ku Cenabê Heq û bêhijmar melaîketên xwe "**selat û selam**"an li serê didin, mûqtezayeke îmanê ye. Lewra Rebbê me, di ayeta pîroz de gotiye:

"(Ey Resûlê min! Ji wan re) **Bibêje: Heke hûn îddîa dikin ku bera hûn ji Xuda hez dikin, bibin peyrewê min, vêca ku Xuda jî dê ji we hez bike û ewê gunehên we meğfîret bike**."[328]

326. Ehzab, 33/56.
327. Ehzab, 33/56.
328. Alî Îmran, 3/31.

Bêşiwar dema mûmîn, li hemberî hezkirina ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pêşî ji Xudayê xwe saw bigre, hest bi edebê bike û rûh û gîyanê xwe ji temamê xet û dîmenên nefsanîyetê vala bike, maneya vê hingê ew ketiye rêya durust ji bo karibe para xwe ji hezkirina Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- û ji şexsîyeta nimûneyî ya wî, wergire..

Mêrxasên dilî (welî) yên ummetê ku para xwe ji şexsîyeta mûbareka wî wergirtine û di wî de bi fanî û tine bûne, ji bo hezkirina ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- çi nimûneyên sipehî raxistine ber çavan.

Ew mirovên ku di Xuda û Pêğemberê Wî de bi serkehnîya hezkirin û mehebbetê gihane, heta qiyametê wek dostê ummeta Mûhemmedî dijîn, di piştî jîyana miroka xwe de jî tim bi rahm û dûayan têne bibîranîn. Ji evîndarên bêjimar ên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- yên ku bi vê rewşê gihane, halê duduyan ji wan wiha ye:

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi meqsûda dan hînkirin û belavkirina dînê mûbînê Îslamê mûallim û seyda ji êl, hoz û qebîleyên derdorên xwe re dişandin. Lêbelê hinek mûallimên ku wî şandibûn ğedr û xîyanet li wan hatibû kirin. Çawa yek ji wan jî di Weqaeta Recî de hatibû meydanê.

Qebîleyên ‘Adal û Qare mûallim ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- xwestibûn da ku Îslamê li wan hîn bikin. Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hey’etek ji wan re şand ku ew ji diwazdeh kesan pêkdihat. Çi dema hey’et giha cihê bi navê Recîyê, ferdên hey’etê ketin wê kemînê ku li ber wan hatibû danîn, heşt kes ji wan hatin şehîdkirin, du kes ji wan jî bi dîlî hatin girtin û ew ji mûşrikên Mekkehê re hatin teslîmkirin.

Ew sehabîyên ku dîl hatibûn girtin jî Zeyd û Xubeyb -radîyellahû anhûma- bûne. Herdu jî ji terefê mûşrikên zalim ve hatin şehîdkirin. Berî wî şehîd bikin jî mûşrikan ji Zeyd pirs kirin, jê re gotin:

“-Di hemberî xilasbûna jîyana xwe de te dixwest ku vêga Pêğemberê te di şûna te de bûya?”

Zeyd -radîyellahû anhû- dilê wî bi Ebûsufyanê ku ev pirs jê kiribû, şewitî, li wî meyzand û jê re wiha got:

“-Bi dilê min ne xweş e heta ku strîyek jî di lingê Pêğemberê min de here, ji xwe tu ji vê behs neke ku ez li nav zarûzêçên xwe de bim û ew jî li vir di şûna min de be.”

Ebûsufyan li hemberî vê mehebbetê sar bû û jê re got:

“-Herrik! Bi qeder ku eshabê Mûhemmedî jê hez dikin, min li dinyayê du kesê dîtir nedîtine ku ew qeder ji hev hez bikin.”

Piştre ew çûne dev Xubeyb -radîyellahû anhû- û jê re gotin; heke tu ji dînê xwe vegerî, tu yê ji mirinê rizgar bibî.

Xubeyb -radîyellahû anhû- ji wan re got:

“-Heke hûn dinyayê jî bidin min dîsa ez ji dînê xwe venagerim!”

Ew pirsa ku ji Zeyd -radîyellahû anhû- kiribûn, dîsa ji wî jî pirs kirin û ew heman cewab ji wî jî wergirtin.

Xubeyb berî were şehîdkirin wî arzûyeke tenê hebû:

“Bi mehebbet silav şandina ji Hezretê Pêğember re!..”

Lêbelê ma wî dikarîbû silavên xwe bi kî re ji pêğemberê Xuda re bişîne! Haleveku mislimanekî tenê jî li cem wî nebû! Wî bi awayekî ğemgînane berê çavên xwe bi asîmanî ve da û bi awayekî penah-xwazane got:

“-Xudayê min! Li vir ti kes nîn e ku silavên min bigihîne pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- Tu silavên min ji wî re bigihîne!”

Di wê navberê de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li Medînê bi sehabîyên xwe re rûniştibû, sehabîyên li derdora wî jê ev hevoka ha; “*we eleyhisselam*” ku bi maneya;“bila silav li ser wî be jî” bihîstin. Çi dema eshabê kîram bi sosret û heyret jê pirs kirin, jê re gotin:

“-Ya Resûlellah! We bersiva silava kî da?” Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

“-*Min bersiva silava birayê we Xubeyb da*.”

Di dawîyê de kafiran ew herdu sehabe jî di bin şkenceyeke giran de şehîd kirin. Dema kafiran ew şehîd dikirin jî yek ji wan peyvên ku Xubeyb gotî, pirr manedar e:

“Piştî ez wek misliman mirim, vêca halo, yan jî wilo mirin, ji min re ne ğem e!”[329]

329. Binêrin. Buxarî, Meğazî, 10; Waqidî, Meğazî, rûp. 280-281.

Ha ji we re îman, evîn û wêrekîya sehabîyan!.. Tabloyeke şkenceya wiha me dixe dehşet û heyretê, lêbelê evîndarên Xuda û Resûlûllah li hemberî dîmeneke wiha hîç saw nedigirtin. Hemû derdên wan, bi mezherbûna ji bo teweccuha pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bû. Bi îxlas û mehebbetên wan silavên wan bi cihê xwe digihan; hem jî ji terefê silavgihanê ji hemû silavgihanan mezintir Cenabê Heq ve, dihatin gihandin..

Ev mîsala ku hesret û mehebbeta eshabê kîram ji Hezretê Pêğemberî re radixe ber çavan, çi qeder îbretdar e:

Ebdûllah bin Zeyd el-Ensarî -radîyellahû anhû- hate dev pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, jê re got:

"-Ya Resûlellah! Ez ji nefsa xwe, ji malê xwe, ji zarûzêçên xwe û ji malbata xwe jî bêhtir ji Te hez dikim. Heke nîmeteke wekî hatina cem te û dîtina Te nebûya, min ji bo xwe mirin arzû dikir" û ew girî.

Vêca dema Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê pirs kir; jê re got:

"*-Tu çima digrî?*"

Ebdûllah bin Zeyd el-Ensarî -radîyellahû anhû- bersiva wî wiha da, jê re got:

"-Ya Resûlellah! Rojekê hûn jî û em jî her dê bimirin, hûnê bi pêğemberan re di meqamên bilind de bin, em jî heke biçin cennetê jî emê li meqamên jêrîn de bibin, vêca ez dihizirim û (ku ezê nikaribim we bibînim vêca bi vê endîşeyê) ez girîm."

Ummana merhemetê Pêğemberê me -sellellahû eleyhî we sellem- cewaba wî neda û huş bû. Di vê navberê de ev ayeta pîroz hate xwarê:

"**Kî, bi xebera Xuda û Pêğemberê Wî bike, ha ew dê bi pêğemberan, siddîqan, şehîdan û salihan re bibin ku Xuda nîmet li wan kirine. Ew çi xweş dost in!**"[330]

Ebdûllah bin Zeyd el-Ensarî -radîyellahû anhû- di demeke ku di nav bostanê xwe de kar dikir de kurê wî bi nefeseke bêhn-çikiyayî hate balê û bi ğemgînîyeke mezin xebera wefata pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we

330. Nîsa, 4/69.

sellem- jê re anî. Ebdûllah bin Zeyd-el-Ensarî -radîyellahû anhû- bi vê xebera naxweş hejîya, wiha dûa kir, got:

“-Xudayê min! Çavê min kor bike ku êdî ez ji hezkirîyê tekane’yê xwe Hezretê Mûhemmed -sellellahû eleyhî we sellem- pê ve ti kesî din pê nebînim.”

Dûaya Ebdûllah bin Zeyd el-Ensarî -radîyellahû anhû- hate qebûlkirin û hema li wir bû ku êdî çavên wî tiştek nedîtin û ew kor bûn.[331]

Ha ji we re mehebbet, di navbera du qelban de xeteke cereyanê ye. Hezker, hîç ti zemanî hezkirîyên xwe ji dilên xwe û ji ser zimanên xwe naxin. Bi awayê bezlkirina (dana) canên xwe û malên xwe di ber hezkirîyên xwe de di nav hizûra fedakarîyên xwe de dijîn û dimrin. Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha dibêje:

“**Nimêj bikin, zekatê bidin û îtaeta Pêğember bikin; hêvî heye ku hûn bi xêra vê bi merhemeta îlahî bigihin**.”[332]

Bi mûcibê destûra; “hezker, ji her tiştê hezkirîyê xwe hez dike û jê re dibe meftûn.” Bi her nêrînê, îttîba uswe’ya hesene, Hebîbê Kibrîya şert e. Wisa ye ku di vê mijarê de evîn, mehebbet û îttîba ji bo hezkirina ji Heq hestîyê piştê pêktîne.

Di kelîma tewhîdê de di piştî “La îlahe îllellah” de hevoka “Mûhemmedun Resûlûllah” tê. Naxwe her kelîma tewhîdê û her selewata şerîf, sermayeyê mehebbet û nêzîkbûna ji Heq pêktîne. Jîyana dilşadîya dinya û axretê û hemû fetihên manewî, bi sermayê mehebbeta Wî têne qezenckirin. Cîhan, tezahura mehebbeta îlahî ye. “Nûra Mûhemmedî” kakila cewhera wê zihûrê pêktîne û tekane rê jî ji bo gihiştina Zatê Ulûhîyyetê, hezkirina ji Wî ye.

Rûhanîyeta di îbadetan de, zarafeta di mûamelatan de, nezaketa di exlaq de, letafeta di dilan de, nûra melahetê ya di çehre û sîmayan de, selaseta di zimanan de, ziravîya di hestan de, kûrahîya di awiran de, welhasil hemû ciwanî, ji mehebbeta Wî nûra hebûnê çîk û tîrêj in, xwe di qelban de didin xuyakirin..

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

331. Binêrin. Qurtûbî, el-Camî lî-Ehkami’l-Qur’an, V, 271.
332. Nûr, 24/56.

“*Were hey dil! Cejna rasteqîne, gihiştina Cenabê Mûhemmed e. Lewra ronahîya cîhanê, ji nûra cemala wî hebûnê mûbarek e*.”

❁

Ji bo feyz û bereketa îlahî li ser dilan werin neqşkirin, di hemû zeman û mekanan de bi taybetî di wextên seheran de bi Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re xurtkirina rabîtayê lazim e, û ji bo par-wergirtina ji rûhanîyeta Wî jî ehemmîyeteke mezina selewatên şerîf heye..

Dostên Heq ku di heqîqeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de ji xwe re jîyan peyda kirine, wan selat û selam anîn û bi vê wesîleyê fezîletên nêzîkbûna ji Xuda û pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha rêz kirine, gotine:

**1.** Bi cihanîna fermana îlahî, di selewatên wan de ahengdarbûna bi Cenabê Heq û melaîketên wî re çêdibe.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

“**Bêşiwar Xuda û melaîketên wî zehf selewatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî selewatan li ser wî bidin û bi teslîmîyeteke tam silavê li wî bikin.**”[333]

Hîç şubhe nîn e ku ji cîhetê maneya wan ve, di navbera selat û selamên Xuda, selat û selamên melaîketan û selat û selamên mûmînan de ferq heye. “Selata Xuda” rahmkirina wî li pêğemberê wî ye û bilindkirin û mezinkirina meqamê ye. “Selata melaîketan” ji bo Hezretê Pêğember îstiğfar û dûa-kirina wan e. “Selata mûmînan” jî di bara pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de dûa-kirina wan ya ji wî re ye.

**2.** Ji bo efûya gunehan wesîle ne.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

“*Kî careke tenê selewatan li ser min bide, Xuda deh caran selewatan li ser wî kesî dide, deh xetayên wî têne xîçkirin û deh dereceyên wî jî têne bilindkirin*.”[334]

**3.** Li Qiyametê ew ji bo nêzîkbûna ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibin wesîle.

333. Ehzab, 33/56.
334. Nesaî, Sehw, 55.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Roja qiyametê însanên ji her însanan bêhtir ji min nêzîk; ew kes in ku ji her kesî bêhtir selat û selam li ser min dane.*"[335]

**4.** Ew kesên ku silavan li Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dikin, hemberê (bersiva) wan tê dayîn.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Ji bo ez bersiva silava kesê ku silavan li min dikin, bidim Xuda, rûhê min li min vedigerîne.*"[336]

**5.** Kî selewatan li ser Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bide, navê wî ji Mezinê me Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re tê eşkerekirin.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Li sererdê hinek melaîketên seyyah ên Xuda hene. Ew silavên ummeta min bi xwe re hildigrin û ji min re tînin.*"[337]

**6.** Ew kesê ku selat û selaman dide, ji ber ew dibe ku wî hezkirina ji Xuda û Pêğemberê Wî li ser hemû hezkirinên din tercîh kiriye, ew di mijara ji bo xwe bi exlaqkirina exlaqê wî de jî sewîyê qezenc dike, ji exlaqê neçê rizgar dibe û bi fezîletê digihe..

**7.** Çawa hezkirina Nebîyyê Ekrem jî ji bo wî kesî zêde dibe, her wiha hezkirina wî kesî bi xwe jî ya ji Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- berdewam dike û ew li ser hev her kom dibe û zêde dibe.

**8.** Digel bêhijmarbûnîya wan lutfên ku Xuda ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re û bi wî re ji me re jî îhsan kirine ew qeder zehf zêde ne, ku bi reqeman nayên jimartin jî, dîsa em bi selat û selam dana li ser Mezinê xwe pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- heke çi qeder hindik be jî me hewl daye ku em heqê Wî ji stûyê xwe eda bikin..

335. Tirmizî, Witr, 21.
336. Ebûdawud, Menasik, 96.
337. Nesaî, Sehw, 46.

**9.** Ew ji bo peyabûna rahma Xuda li ser me, wesîle ne.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Kî, careke tenê selat û selaman li ser min bide, bi vê sebebê Xudê Teala dê bi deh caran bi qeder wan, rahma xwe li wî bike.*"[338]

**10.** Ew ji bo bi bîrhatina peyva ku hatibû jibîrkirin dibin sebeb.

**11.** Ew ji bo qebûlbûna dûayên ku hatine kirin dibin wesîle.

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- zilamek dît ku wî di piştî nimêja xwe de hemd ji Xuda re nekir, selewat jî nedan û wisan dest bi dûayên xwe kir. Vêca Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- got:

"*Vî zilamî zehf lez kir.*" Piştre wî ew zilam ji bo cem xwe bang kir û jê re wiha got:

"*Dema yek ji we dûa bike, pêşî bila ji Xuda re hemd û sena bike, piştre bila selat û selaman li ser min bide. Paştir jî ew çawa bixwaze bila wisan dûa bike.*"[339]

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke dîgera xwe de jî wiha dibêje:

"*Ew kesê ku dûa bike, heta ew selewatan li ser Pêğember nede, dûaya wî perdekirî ye (bi hedefa xwe nagihe)*."[340]

**12.** Ew (selat û selam) dikin ku însan ji rûbirû mana ji bo îtaba îlahî, were parastin:

Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Bila pozê wî kesî li axê bikeve, ewê ku li cem wî navê min tê gotin lêbelê dîsa ew selewatan li ser min nade!*"

**13.** Ellah Teala, ji bo wî bendeyê xwe yê ku selewatan li ser Pêğemberê wî dide, di karûbarên wî de kafî ye û ew hem kederên dinyayî, hem jî kederên axretî ji wî îzale dike, jê dibe.

Çawa Ubey bin K'ab -radîyellahû anhû- vedibêje:

338. Mûslim, Selat, 70.
339. Tirmizî, Deawat, 64.
340. Mûnzirî, et-Terğîb wet-Terhîb, III, 165.

Min ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kir, min jê re got:

«-Ya Resûlellah! Ez gellek selewatên şerîf li ser Te didim. Gelo divê çi qeder ji van bikim?»

Wî ji min re got:

«-*Tu çi qeder bixwazî, ew qeder wan bike.*»

Min jê pirs kir, jê re got:

«-Ma çêdibe ku ez çaryeka dûayên xwe ji bo selewatên şerîf veqetînim?»

Wî ji min re got:

«- *Tu çi qeder bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu çi qeder wan zehftir bikî, wê ji bo te bixêrtir be.*»

Min jê re got:

«-Naxwe ezê ji du-nîvên dûayên xwe nîvekê ji bo selewatên şerîf veqetînim.»

Wî dîsa ji min re got:

«- *Tu çi qeder bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu çi qeder wan zehftir bikî, wê ji bo te bixêrtir be.*»

Min dîsa jê pirs kir, jê re got:

«-Naxwe ezê ji sê parên dûayên xwe du paran ji selewatan re veqetînim, ma ev qeder ne bes e?»

Wî ji min re got:

«*Tu çi qeder bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu çi qeder wan zehftir bikî, wê ji bo te bixêrtir be.*»

Çi dema min jê re got:

«-Naxwe ma çêdibe ez wê dema ku ji bo dûayan vediqetînim tevê ji bo dana selewatên şerîf li ser te veqetînim?»,

Wî ji min re got:

*«-Di wê rewşê de Xuda, wê hemû tengasîyan ji te bibe û wê gunehên te jî bibexşîne.»*”[341]

Naxwe selat û selam dana li ser Hezretê Pêğember, ji bo mirovî îrtîbat û peywendî-kirina bi rûhanîyeta wî re û îstîfade-kirina ji nûra wî temîn dike. Mûkafata van selewatan jî, hemberê hezkirina bendeyî ya ji Hezretê Pêğember û îxlasa wî (semîmîyeta bendeyî ya ji Hezretê Pêğemberî re) ye.

**Ey Resûl, ey Nebî, selat û selamên bêdawî li ser Te bin!..**

**Dexîlek, ya Resûlellah!**.[342]

### h- Tefekkura Mewtê (Mirinê)

Li dinyayê ne demek û cihek heye ji bo însan karibe ji ber mirinê bireve,

Di qebrê de ne îmkan û derfetek heye ji bo însan dubare bi şûn de vegere ser dinyayê

Ne jî êwirgehek heye ji bo însan ji ber dijwarîya qiyametê bireve, here têde bihewe..

Însan, di nav herka jîyanê de di navbera du hevdij ên wekî dilşadîya jîyanê û saw-girtina ji mirinê de dikeyê û lerze lê dikeve. Jîyan, di wezîyeta herkeke daîmî de ye, naxwe heta maneyên rasteqîne yên heyat û mirinê neyên îdrak-kirin, ne sirr û hikmetên aferînê, ne jî mahîyeta rasteqîneya însanî tên fehmkirin.

Mirin, bêîstisna tê serê her seyyahê jîyanê, ew mûammayek e ku hemû heyberên xwedî îdrak mecbûr in wê çareser bikin.

Cenabê Heq di Sûretê Mulk, ayeta duduyan de dibêje:

الَّذِي خَلَقَ الْمَوْتَ وَالْحَيَاةَ لِيَبْلُوَكُمْ أَيُّكُمْ
أَحْسَنُ عَمَلاً وَهُوَ الْعَزِيزُ الْغَفُورُ.

341. Tirmizî, Qiyamet, 23.
342. **Dexîlek ya Resûlellah**: Ya Resûlellah! Îhtiyaca min bi şefaet û merhemeta Te heye!

“**Ew e ku mirin û jîyan aferandine da ku we îmtîhan bike ka kîjan ji we wê** (di nav hesta îhsanê de) **sipehîtir amel bike**.”[343]

Cenabê Heq di Sûretê Enbîya, ayeta 35.an de jî dibêje:

“**Her candar mirinê diçêje/t‘am dike. Em wek îmtîhanekê we bi xêrê jî û bi şerê jî diceribînin. Û hûnê bes li me bêne vegerandin**..”[344]

Dinya, dersxaneyeke îlahî ya îmanê ye, mirin jî qanûneke întîqala zerûrî ye. Hezretê Mewlana dibêje:

“*Em ji bo ji nû ve sağ bibin, dimrin*.”

Vejîna dil, bes bi devjê berdana ji nefsanîyetê mûmkin e. Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

“*Mirina ku hemû zewqan ji kokê tine dike zehf di bîra xwe bînin!*”[345]

Tefekkura mewtê (mirinê), berî hatina mirinê, mirin di bîra xwe-anîn e. Bi vî awayî dûrbûna ji nefsanîyetê, bi îradeya xwe amadebûna ji bo hizûra Rebbê xwe ye. Ev, tefekkur û pêhisek e, piştа xwe dispêre îmanê.

Arzûyên dinyewî yên însanî ku nizanin xilas bibin û biqedin û umîd û tesellîyên fanî yên wî, çi weşîna peleke mûdhîş e ku dikeve ser axa qebrê.

Goristan, bi adresên dê-bav, zar û zêç, hezkirî, xizm, lêzim, dost û hevalên ku jîyana miroka xwe xilas kirine, tije ne. Jîyana dinyayê, dixwaze bila di serayê de derbas bibe, dixwaze jî bila di kadînê de were jîyînê û derbas bibe, nuqteya derketka mecbûrî ya hemû rê û fetlan her qebr e. Ne demek ne jî mekanek heye ku mirov ji ber wê bireve û ji wê rizgar bibe.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de ferman dike, dibêje:

“**Bibêje: Bi rastî ew mirina ku hûn ji ber wê direvin, hemin ewê we bigre. Piştre hûnê li wî Xudayî bêne vegerandin ku ew ya veşartî û ya eşkere jî dizane. Ewê kirinên we yek bi yek ji we re bibêje**.”[346]

Her kêleke mezaran ku bêdengîya mirinê li xwe kiriye, bi zimanê halê xwe şîretkareke ziman-agirîn e, diaxive. Tesîskirina goristanan di nav bajaran de, di kêleka rêyan de û di hewşên mizgeftan de cure tefekkureke fiêlîya

343. Mulk, 67/2.
344. Enbîya, 21/35.
345. Tirmizî, Qiyamet, 26.
346. Cumûa, 62/8.

mewtê ye, yanî ew tesîskirina goristanan li nav bajaran, kenarên rêyan û li hewşên mizgeftan ji bo vê ye ku mirov mirinê bihizire û dinyayê li gorî wê tenzîm bike. Giranîya tirsnaka mirinê, milên lawazên peyvan neşên wê li ser milên xwe hilgirin û bibin! Hemû desthilatî û îqtîdar li hemberî mirinê bi dawî dibin û dihelin, diçin.

Dinya, serav û leylaneke xapînok e, axret jî heyateke bêmirin e. Bi gelemperî însan, yexsîrê wan derewa ye ku di ayne'yê de di nav tezahur û xuyahîyên hezar û yek cilwe û nazîyan de dixuyên. Her wext û anê ev derew û ev dinyaya ku bêwefatîya xwe dide dewamkirin, heke ne cihê gul-xwerî û xapînê be, naxwe çi ye?

Ma însan ji vê îbret nagire ku her heybera fanî û mirinber tazetî û zindetîya wê di aşê dem û zemanî de bi awayekî tim û daîmî tê hêrdin! Heyateke ku ji rastîya axretê bêxeber tê jîyîn û xwe noqkirina di îltîfatên dinyewî û pêleystokên mirokên ku arzûyên nefsanî dixin bizavê û tehrîk dikin de û bi dûv wan ketin, çûn, li hemberî paşeroj û îstiqbala mezin û bêdawî, gul-xwerî û xwe xapîneke çi qeder tirsnak e!.. Heyateke ğafîlane; di zarokatîyê de ji leystikê, di xortanîyê de ji şehwetê, di mêranîyê de ji ğefletê, di yextiyarîyê de ji bo wan îmkan û firsendên ku ji dest çûne ji hesretê û ji hezar û yek cure ferfitîn, poşmanî û nedametê îbaret û birrîtî ye.

Mirin, qiyameta taybetî ya însên e. Naxwe bila em berî qiyameta xwe şîyar bibin da ku em ji poşmanan nebin. Lewra misoger e ku her fanî û mirinber wê di zeman û mekanekî mechûl de bi Ezraîl re hevrû bibe. Hîç ti cihek nîn e ku mirov ji ber mirinê pê ve bireve û here têde bihewe. Naxwe divê însan, wextê xwe winda neke, para xwe ji vê fermana îlahî; "**ber bi Xuda ve bazbidin**.."[347] wergire û ji bo xwe rahma îlahî tekane penahgeh û êwirgeh qebûl bike.

Sadetirîn tefekkura mirinê, di sirra wê huşbûn û sikûta asêkirî neveba ku di lêvên şîn ên mirîyan de hatiye bi bişkok-kirin de veşartî ye.

Li hemberî belağet û kargêrîya mirinê ya di kirina şîretan de, ew bersivên ku ji dinyayê tên, bes hêstirên çavan û îskeîskên rijî û ziwa ne.

Çi tuhaf û bi sosret e ku însan, li vê dinyaya ku ew ji bo çend rojan wek mêhvan lê dimîne, xwe têde dixapîne. Digel ku ew her rojê sehne û dikên cenazeyan seyr dike jî dîsa ew mirinê ji xwe dûr dibîne. Ew xwe, ji bo

347. Zarîyat, 51/50.

wan emanetên fanî yên ku eger heye ew di her an û gavê de wan jidestbide, xwediyê daîmî dibîne. Haleveku însan dema cesed li rûhê wî hatiye kirin û ew di derîyekî re ji bo dinyayê hatiye şandin, êdî maneya vê ew rêwîyekî mirinê ye. Digel ku ew ketiye cihekî amadekarîyê yê wê rêyê jî lêbelê ew bi pirranî ji vê heqîqetê ğafil û bêxeber dijî. Helbet wê rojek were, ew cesed wê ji rûhê wî were kirin. Ewê di qebrê de ku ew derîyê axretê ye, wê oğira wî ji bo rêwîtîyeke mezin were bixêrkirin.

Her an û gava ku ji şerîda zemanî dikeve, ew me ji sibeha heqîqetê nêzîk dike. Cenabê Heq di ayeta pîroz de vê rastîyê çi xweş îfade dike, dibêje:

"**Em 'emr û temenekî dirêj bidin kê, em aferîna wî** (bi standina hêz û qewweta wî ji wî) **berevajî werdigerînin. Ma ew** (vê dîmen û menzaraya îbretengîz) **nahizirin?** (Ma ew vê rêwîtîya bi îbret îdrak nakin?)"[348]

Di vê ayeta pîroz de bi awayê ji her awayan sipehîtir nesîhet û şîret li însanî tê kirin. Wesfê fariq û cudakarê dinyayê bêwefatîya wê ye. Wê çi dabe însanî her bilezûbez bi şûn de jê distîne. Ew rojekê însanî bilind dike, ew roja bi şûn de jî wî sernişûf û berjêr dike, heta wî dixe binê bîrê. Ew her wekî sihê ye. Heke tu bixwazî wê bigrî, ewê tim û daîm ji ber te bireve. Lêbelê heke tu ji ber wê birevî vêca ew ji te naqere û her bi dûv te dikeve. Ew tiştên ku însan bi pey wan dikeve, dema tu dibêjî ezê îro-sibê bi wan bigihim, naîl bibim, tu ji nişka ve dibînî ku haho gidî wa ye emr û temenê te bi dûvketina wan ve xilas bûye. Heke însan dilê xwe bi dinyayê bide, ew dibe pîrejineke bêxuy û exlaq-xirab. Dem bi dem ew însanî li bin guhê erdê dixe. Weswese û diredir ji pey hev qut nabin. Helwest û bizavên wê bê wefa ne. Ew, wan însanên ku xwe pê ve girêdabin, zûbizû xerc dike, feda dike.

Divê mirov bifikre ku li dinyayê ne demek û cihek heye ji bo însan karibe ji ber mirinê bireve, di qebrê de ne îmkan û derfetek heye ji bo însan dubare bi şûn de vegere ser dinyayê, ne jî êwirgehek heye ji bo însan ji ber dijwarîya qiyametê pê ve bireve, here têde bihewe..

Sehabîyekî ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kir, jê re got:

"Ya Resûlellah, kîjan mûmîn biaqiltir e?"

348. Yasîn, 36/68.

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî wiha beriva wî da, jê re got:

“*Ew kes e ku dem bi dem mirinê di bîra xwe tîne û ji bo piştî mirinê haziriyê dike. Ha însanên bi rastî aqilmend ew in.*”[349]

Dîsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha got:

“*Mirinê û di piştî mirinê de jî rizîna cesed û hestîyan bînin bîra xwe. Ewê ku jîyana axretê bixwaze, xemla dinyayê terk dike.*”[350]

**Fudeyl bin Îyaz** wiha dibêje:

“Ji însanan re wek şîret mirin kafî ye.”

Sehabîyekî ji eshabê kîram wefat kiribû. Hevalên wî bi pesn û sitayîş behsa wî kirin û pirrabîya îbadetên wî gotin.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi bêdengî li wan guhdarî dikir. Çi dema wan xeberdana xwe qedandin, Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem ji wan pirs kir, ji wan re got:

“*-Ma ew kesê ku we behsa wî kir, mirin zehf dianî bîra xwe?*”

Wan jê re got:

“-Nexêr.”

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan pirs kir, ji wan re got:

“*-Baş e, wî di pirranîya dema xwe de dikarîbû dev ji arzûyên zêdegavane û nepêwîst ên nefsa xwe berde?*”

Eshabê kîram hemberê pirsa wî dan, jê re gotin:

“-Nexêr, ya Resûlellah!”

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

“*Naxwe hevalê we bi qeder we behskirî nebûye.*” [351]

Ebdûllah bin ‘Ûmer -radîyellahû anhûma- vedibêje:

349. Îbnû Mace, Zuhd, 31.
350. Tirmizî, Qiyamet, 24.
351. Heysemî, Mecmau’z-Zewaid, X, 308-9.

"Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi min girt û ji min re got:

«*Li dinyayê aynî wekî ğerîbekî heta her wekî rêwîyekî tevbigere! Xwe ji mirîyan û ji ehlê qebran bijimêre.*»"

Yek ji mezinên tabiînan Mûcahid bin Cebr -rahmetûllahî eleyh- dibêje:

Piştî Ebdûllah bin Ûmer -radîyellahû anhûma- ev hedîs guhast, ev şîret li min kir:

"Ya Mûcahid! Dema li te bû sibeh, tu ji nefsa xwe re behsa êvarê neke! Dema li te bû êvar jî tu ji nefsa xwe re behsa sibehê neke! Berî nexweşîyê ji sihheta xwe, berî mirina xwe jî ji heyata xwe îstîfade bike! Lewra ya evdê Xuda, tu nizanî ka sibê tu yê di çi halî de bibî (gelo tu yê mirî bî yan jî sağ bî)!"[352]

Enes bin Malik -radîyellahû anhû- dibêje:

"Erd, her roj bi van deh şîretan bang li însanî dike:

Ya kurê-Adem!

1. Tu pêl min dikî, li ser min digerî; haleveku tu yê li min vegerî.
2. Tu li ser min curecur gunehan dikî; haleveku tu yê di nava min de ezabê bibînî.
3. Tu li ser min dikenî û keyfê dikî; haleveku tu yê di hundurê min de bigirî.
4. Tu li ser min keyfxweş dibî; haleveku tu yê di hundurê min de ğemgîn bibî.
5. Tu li ser (pişta) min mal berhev dikî; haleveku tu yê di hundurê min de poşman bibî.
6. Tu li ser min heramîyê dixwî; haleveku di hundurê min de kurm dê te bixwin.
7. Tu li ser min xwe mezin didêrî; haleveku tu yê di hundurê min de nehêja û biçûk bibî.

352. Tirmizî, Zuhd, 25.

8. Tu li ser min bi şadî digerî; haleveku tu yê di hundurê min de di ğemgînîyê de bixeniqî.

9. Tu li ser min di ronahîyê de geşt û seyranê dikî; haleveku tu yê di hundurê min de di tarîtîyê de bimînî.

10. Tu li ser min di komên qerebaliğ de digerî; haleveku tu yê bi tena serê xwe bikevî hundurê min."[353]

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dema ji eshabên xwe re behsa Qûss bin Saîde'yê ehlê hikmet û fesahetê kiriye, wiha gotiye:

"*Gelî mirovan! Werin, guhdarî bikin, baş jiber bikin û îbret jê bigrin. Ewê ku dijî dê bimre, ewê ku dimre jî dê tine bibe, ewê ku çêdibe jî dê çêbibe. Baran dibare, gîya şîn dibin, zarok ji dêya xwe dibin, ew şûna bavên xwe û dêyên xwe digrin. Piştre jî tev mehû dibin û diçin. Bûyer ji pey hev qut nabin, ew hev û din dişopînin. Li asîmanî xeber heye, li erdê tiştên bi îbret hene. Sererd doşekeke hatiye rastkirin û raêxistin, asîman jî banekî bilind e. Stêr birêve diçin; derya radiwestin. Ewê ku tê namîne, ewê ku diçe, êdî nayê. Gelo ew ji ber ku ji wî cihê ku çûnê memnûn in li wir dimînin; yan jî ew têne desteserkirin û dikevin xewê..*

*Ey êla Îyad! Kanî bavên we û bapîrên we li kuderê ne? Kanî ew 'Ad û Semûdîyên ku kaşaneyên mûzeyyen û xanîyên ji keviran lê dikirin li kuderê ne? Kanî ew Firewn û Nemrûdê ku bi dinyayê serxweve çûn û ji qewmên xwe re digotin; "ez mezintirîn Rebbê w eme" li kuderê ne?*

*Vê erdê ew di aşê xwe de hêrdin, ew kirin toz. Hestîyên wan jî rizîne, ji hev ketine. Xanîyên wan jî hilweşîne, xalî û bêkes û bêkûs mane. Vêga seg li warên wan digerin, keyfê dikin. Zinhar hûn wekî wan ğefletê nekin. Hûn bi rêya wan ve neçin. Her tişt fanî ye, sade Cenabê Heq baqî ye.*

*Cihên ku rûbarê mirinê bikevîyê zehf in; lêbelê cihê ku jê derkeve, nîn e..*"[354]

Mirin, perdeya dawîna sahneya jîyanê ye, ew her wekî ayneyekê ye ku herkes bi xwe xebera serencama xwe dide. Heke bendeyek, di sulteya nefsê de

353. Îbnû Hecer el-'Esqelanî, Munebbîhat, 37.

354. Binêrin. Beyheqî, Kîtabu'z-Zuhd, II, 264; Îbnû Kesîr, el-Bîdaye, II, 234-241; Heysemî, Mecmau'z-Zewaid, IX, 418.

dinyayê ji xwe re biğaye û emanc bike û wisan bijî, qebr jê re wek delhîzeke tarî tê dîtin. Heta bibîrhatina mirinê tenê jî wî ew qeder mûzderib û êşdar dike ku ew bi hîç tiştekî re nayê mûqayese-kirin.

Heke însan ji astenga nefsa xwe bibûre û di encama tefekkura mirinê de di îstîqameta melekîyetê de merhele û qunağan qut bike ku ji xwe ew melakîyet di rûhê wî bi xwe de meknûz e, hingê jê re mirin, ji xeyalê biwêdetir wek merceke mecbûrî ji bo wusleta Rebbê mûezzam û mûteal tê dîtin.. Bi vî awayî ew mirina ku bi pirranî di mirovan de ji bo çêbûna gerzînokên sar dibe sebeb, di însanî de bi heyecana gihiştina yarê xwe werdigere. Mirinên wiha, bi tabîra yek ji mezinên tesewwufê Mewlana Celaleddînê Rûmî; "Şeba Arûsê" ye, yanî şeva dîlanê ye. Ev rêyeke wisa ye, heta wê mirina ku waqîayeke (bûyereke) ji her waqîayan (weqaetan) dehşetdartir e jî, ji bo beşerî sipehî dike. Ji bo însan karibe "mirinê sipehî bike" jî zerûrî ye ku însan astenga nefsa xwe derbas bike û bi halên qelbî yên her wekî tobe, zuhd, tewekkul, qenaet, zikr, teweccuh, sebr, mûraqebe û rizayê bi kemalê bigihe.

Di gihiştina qelb ya bi vê safîyetê de tesîreke giringa tefekkura mirinê ya wisan heye ku bandora wê bi tişteke dîger re hîç nayê mûqayesekirin. **Reb'î bin Huseyn** di vê babetê de wiha dibêje:

"*Heke qelbê min, ji karê bibîranîna mirinê dûr bibe, ez ditirsim ew xirab bibe. Heke min ji xwe dijberîya yên berî xwe kiribûya, ez heta bi mirinê li qebristanê rûdiniştim.*"[355]

Qelb, heta bi mirinê di navbera îhtiyacên nefsanîyet û rûhanîyetê de dikeyê û lihev dikeve. Mirin, ji bo rêwengîya axretê destpêkeke zerûrî ye. Berî derketina vê rêwengîyê, bi marîfetûllahîyê amadekirina qelb ji bo mirinê, keyfîyeteke wisan e ku divê mirov bi ti awayan wê îhmal neke, divê mirov ji endîşe û pêxavên mirinê rizgar bibe da ku karibe sihhet û selametîya qelbî ya xwe temîn bike. Bi vî awayî, sirra "*Berî mirinê em dimrin*." teheqquq dibe û însan -adeta- di şûna hakimîyeta nefsê de ku ew hatiye tinekirin, bi maneya kamil mehebbet û îtaeta wî ji Xuda re tehqîq bûye.

355. Beyheqî, Kîtabu'z-Zuhd, rûp. 212.

## i. Bi Salih û Sadiqan Re Bûn

**"Gelî mirovên ku îman anîne! Xwe ji Xuda biparêzin û bi sadiqan re bibin!"** [356]

Ji bo parastina qelb ji masîwa (her tiştên ji bilî Xuda) û daîm bi mûxatebkirina wî ji bo telqînên xêrê, unsîyet û hogirîya bi salih û sadiqên ehlê dil ên ku mirov karibe ji rûhanîyeta wan feyzê wergire, zerûrî ye. Lewra digel ku di her aza û endamekî de îradeyek heye jî lêbelê dîsa di qelb de îrade nîn e û qelb, di wê temayulê de ye ku ji hawîrdorên wî jê re çi bandor û tesîr bêne telqînkirin di wê îstîqametê de peywend dibe.

Qelb, di nav çi weset û hawîrê de bibe, rengê wê, şeklê wê û ahenga wê lixwe dike. Lêbelê ev rewş, ji bo di qelb de bicihbûn û kok berdana hinek tesîrên diyar, halê destpêkê ye. Piştre ew tesîrên mûsbet, yan jî menfî yên ku têne holê, bi sebeb lêçûna wan yan jî dijayetîya wan ji yên berî xwe re dibe ku ew mûsbet bibin û dibe ku ew menfî jî bibin. Lêbelê qelb, di destpêkê de heta bi tesîrên baş neyê peywendkirin û bi qiwameke diyarkirî neyê anîn, bi xetereke mezin re her rûbirû ye. Lewra ew qelbê ku ji tesîrên derveyî re mûxateb e, bi qeder mehebbeta xwe di bin bandora wan de dimîne; bi qeder nefreta xwe jî ji wan re roleke reddkar dileyîze. Ha bi vê sebebê ye ku di bilindbûn û nizmbûna însanî ya ji hêla maneyî de, di cihê wan de bikaranîna mehebbet û xusûmetê mûessir û kartêkereke pirr mûhîm e. Bi rastî tewcîhkirina mehebbeta xwe ji bo mirovê ku jê re layiq be û tewcîhkirina xusûmeta xwe ji bo mirovê ku jê re mûsteheq be, xwedîyê xwe abad dike.. Bi berevajîyê vê jî tewcîhkirina mehebbeta xwe ji bo mirovê ku jê re ne layiq be û tewcîhkirina xusûmeta xwe jî ji bo mirovê ku jê re ne mûsteheq be, xwediyê xwe bi qeder îsabet û dijwarîya wî di van tewcîhan de bedbext dike..

Dema em vê heqîqetê li ber çavên xwe digin, ji bo tereqqîya manewî pevrebûna bi bendeyên salih ên Xuda re û lazimî û ehemmîyeta jîyînê di nav daîreya tesîra wan de, bi awayekî bariz û eşkere derdikeve holê. Lêbelê di vê rewşê de jî îstîfade, bi qeder mehebbeta ji mûxatebê xwe bicihtê. Heke na, peverebûneke rijî û ziwa'ya ji kûrahîya rûhî re bêgane, heke çi qeder kêm yan jî zêde feyde bide jî lêbelê wê netîceya metlûb, hasil nake. Di vê mijarê de ev qisseya ku ji Bayezîdê Bistamî -quddîse sirruh- hatiye guhastin, pirr îbretdar e:

356. Tewbe, 9/119.

Mirîdekî ji mirîdên wî ji Bayezîd re dibêje:

“-Ez benî, ji kerema xwe perçekekê ji kurkê xwe bide min, ezê ji bo teberrukê wî li ser xwe hilgirim!..”

Bayezîd jî di bersiva wî de jê re wiha dibêje:

“-Kurê min, piştî ku tu ne li ser îstîqametê bî, ne kurkê Bayezîd, heke tu çermê wî jî biqelêşî û bikevî navê dîsa ew feyde nade!..”

Di kaînatê tevî de temayula bi hev-aynîbûnê mewcûd e. Ev keyfîyetek e ku ji tekbûna esilê hebûnê diwelide. Zêdebarî vê jî, ev temayula bi hev-aynîbûna giştî hem ji bo keyfîyetên fîzîkî, hem jî ji bo rewşên rûhî û gîyanî derbasdar e. Mesela; di kîjan goşeya odeyekê de şûşeyeke bêhneke tûj werg-ere, ew bêhna ku ji vê li hawîrdoran belav dibe, heta temamê zerreyên hewayê ku odeyê tije dikin wekhev û yeksan nebe, ji zerreya hewayê ya ku ew bêhn zêde mêhtibe, wê ber bi zerreyên din ve sîrayetek (bûrînek) cereyan bike.. Ev keyfîyeta ku ji bo hemû tecellîyên hevdij ên wekî germ-sermayê aynî derbas-dar e, qanûneke fîzîkê ye. Lêbelê ji bo ev qanûn, karibe di heyata beşerî de tezahur bike, îhtiyac bi wasîteyekê heye ku hev-aynîbûnê temîn bike û ew jî **mehebbet** e.

Di zimanê gel de bi meqsûda îfadekirina vê nukteyê peyvek bi awayê “ji qelb ji bo qelb rê heye” meşhûr bûye.

Bi pirranî şesîyetên hêzdar û enerjîk, ji lawazan re bûne serkehnîya îlhamê. Di esasê xwe de yek ji temayulên mewcûd ên di tebîatê însanî de jî hissa teqlîdê ye. Zarokek, di destpêkê de hemû kirin û bizavên xwe bi vê hissê tenzîm dike. Lêbelê ev temayul, di dirêjahîya jîyana wî de hindik be yan jî gellek be, her daîm ew mewcûd dibe. Bi vê nêrînê xuşûya di îbadetên salih û sadiqan de sewîya bilinda di exlaqên wan de, şefqet, merhemet, ziravîya rûhî û kûrahîyên wan di mirovên li hawîrdorên wan de hissa teqlîd û taqîba vî halê wan, şîyar dike. Çawa eshabê kîram ku rabûrîya wan însanê cahilîyetê bûn jî bi vê hissa ku li hemberî şexsîyetê nimûneyî yê bêhempa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hestpê dikirin, ew bi zirwe bûne.

Em, ji çavdêrî û mûşahedeyeyên xwe yên di alema zahirî de dizanin ku seydayê kîjan dersê xwe bi xwendekarên xwe bide hezkirin, ew ders ji xwendekarî re hêsan tê û hizûrê dide wî. Lewra hezkirin, roleke sêhrdar diley-ize ku ew zehmetîyan bi rahmê werdigerîne. Di demeke ku ew meşğûlîyeta tê hezkirin çi qeder giran be jî nsan jê re bi hêsanî deruhde û adapte dibe; kulfeta

wî karê ku nayê hezkirin jî bi rastî ji hebûna xwe qat bi qat girantir tê. Dema mehebbet di rûh de tê meydanê, hingê ew nimêja bîst rekatî ya terawîhan sivik tê, nimêja çar rekatî (du rekat sunnet û du rekat jî ferz bi tevahî çar rekat) ya sibehê ji însanî re giran tê. Giranî û tenbelîya di bizavan de jî wekî vê, encama bêmehebbetîyekê ye. Ha dema em van mîsalan tehlîl û analîz dikin, em dibînin ku di pevrebûna bi salih û sadiqan de tijebûna bi hissên mehebbetê, xwedî bandoreke rûhanî ye û adeta ew xwedî tesîreke sêhrdar e ku çendan efraz û berwarên zehmet ên di rêyên manewîyatê de berteref dike..

Li alîyê din ji bo parastina hizûra qelbî jî divê mirov bi tundî xwe ji unsîyet û hogirîya xwe anîna bi ğafil û fasiqan biparêze, dûr bigre. Lewra bayekî ku ji ser zibilgeh û laşên teaffun bûyîn (bêhn pê ketin) derbas dibe û tê, bêhnên mûlewwesên (pîs bûyî yên) wan werdigre û bi ser derdoran de belav dike, nefes û hilman dixitimîne û rûh û gîyanan dixe tengasîyê.

Şêx Ûbeydûllah Ehrar -quddîse sirruh- di vê mijarê de li yaranê (dost û yarên) xwe wiha şîret dike, dibêje:

“-Bi eğyar û bêganeyan re bûn, fitûrê (laşgiranî û sistahîyê) dide qelb, berdîberdanê dide rûh û perîşanîyê dide dil.”

Çawa Bayezîdê Bistamî rojekê di hundurê xwe de hest bi perîşanî û bêhizûrîyeke wiha kir. Wî kir û nekir nekarî xwe ji vê rewşê rizgar bike. Ji mirovên li dîwana xwe re got:

“-Ka ji kerema xwe binêrin, gelo di navbera me de yekî biyanî heye?”

Wan lêgerîn kir, di navbera xwe de ti kes nedîtin. Lêbelê Bayezîdê Bistamî israr kir û got:

“-Ji kerema xwe baş lêgerînê bikin. Li cihê kopalan binêrin.” Wan dubare lêgerîn kir û kopalê mirovekî ğafil dîtin. Ew kopal derxistin derve; vêca hizûra dilî ya Bayezîdê Bistamî jî hate cihê xwe.

Dîsa rojekê Hezretê Xwace Ûbeydûllah Ehrar ji bo lêzimekî xwe yê ku hate hizûra wî, got:

“-Bêhna biyanîtîyê ji te tê.” û ev jî îlawe kir û got:

“-Ez dibêm hema te cilên yekî biyanî lixwe kirine.”

Wî kesî bi heyret jê re got:

“-Erê wisa ye.” û ew çû ew cil guherandin û dubare hat.

Ev taybetmendîya sîrayetê ya di halên menfî de, di halên mûsbet de jî aynî wisan derbasdar e. Ciwantirîn mîsala vê jî di navbera Yûsuf -eleyhisselam- û bavê wî Yaqûb -eleyhisselam- de hatiye meydanê. Dema Hezretê Yaqûb taybetmendîyên xwe di kurê xwe Yûsuf de dîtin, ji zarokên dîgerên xwe bêhtir meyla xwe da wî. Ev bi mehebbet wisan bi hev-aynî bû ku paştir dema gomlekê Yûsuf ji Misrê jê re dianîn, digel ku Yaqûb -eleyhisselam- li warê Ken'anê bû jî dest bi wergirtina bêhna wî kir. Haleveku ji bilî wî hîç ti kesî heta kurê wî Yehûda yê ku ew gomlek bi xwe re anî jî hest bi sirra di wê bêhnê de nedikir. Çi dema gomlek bi rûyê Hezretê Yaqûb ve hate vemiştin û hekandin, ew dem çavên wî hatin vekirin û dest bi dîtinê kir. Ev rewş, tezahureke wê rûhanîyet û rabîtayê (peywendîyê) ye ku heta bi tiştan jî sîrayet dike û diçe wan jî.

Li hemberî sîrayetkirina halên manewî heta di tiştan de jî naxwe pêwîstîya bi titîzî parastina qelbê însanî yê ku bêşubhe ew ji tiştan hessastir e, li holê eyan û beyan e.

Dîsa mezin di vê mijarê de dibêjin:

"Heyberên bêcan jî înîkasê ji amel û exlaqê gel werdigrin. Li ser vî esasî îbadetê li cihekî ku curecur mekrohî lê hatine îrtîkab kirin û îbadetê li cihekî ku ji bo amelê salih û xêran bûye mekan, bi qîmetê xwe ji hev pirr ferqdar û cuda ne. Ji lewma nimêjeke ku di herema K'abê de tê kirin, ji nimêja ku li cihekî dîger de tê kirin, qat bi qat bixêrtir e."

Li hemberî feyz û rûhanîyeta di mekanên wekî vî mûbarek de hinek mekanên wisan jî hene ku ji wan jî qesawet sîrayet dike. Çawa eshabê kîram di vegera xwe ya ji Sefera Tebûkê ya bi hezar û yek meşeqqetan tije de ji bo xwe dana ber sihê û ji bo temînkirina avê li Gelîyê Hicrê ketibûn nav wan koşkên ku qewmê Semûd kevir şeh dabûn û ew pê avakiribûn. Vêca Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re gotibû:

"*-Li vî mekanî Cenabê Heq, Qewmê Semûd biriye helakê. Naxwe ji bo parek ji wê qehrê neyê ji van deveran avê wernegirin.*"

Çi dema eshabê kîram jê re gotin:

"-Ya Resûlellah! Me meterkên xwe ji avê tije kirine û me hevîr bi vê avê sitraye.", Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ferman li wan kir û ji wan re got:

“-*Avê birijînin û hevîrên xwe jî bi hêştiran bidin xwarinê*!”[357]

Her yek ji vê bûyerê û weqaetên wekî vê, mîsaleke zindî ne, şanî didin ku haletê rûhî heta înîkas û sîrayeta wî di cemadatan (heyberên bêcan) de jî çêdibe.

❁

Ji bo înkîşafa (bi holê derketina) mezîyetên qelbî û îrtîfa (bilindahî) qezenckirina wan, divê em hewl bidin ji halên sipehî yên salih û sadiqan feyzê (enerjîya manewî) wergirin. Ciwantirîn şeklê înîkaseke (şekl-xuyabûneke) wiha mûsbet, di sohbetan de tê cih û tehqîq dibe. Çawa Luqman -eleyhisselam- di van wesîyetên ku li kurê xwe kirine de balê dikişîne ser vê mijarê û jê re wiha dibêje:

“*Kurê min! Bi kesên zana re bibe û hewl bide ji bo tu ji sohbetên wan cuda nebî! Lewra Ellah Teala wekî ku bi baranê axê zindî dike, aynî wisan bi hikmetê jî qelban zindî dike.*”[358]

Ev hedîsa şerîf jî giringîya sohbetan û dereceyên manewî yên ku ew bi mûmînî bidin qezenckirin çi xweş îfade dike, dibêje:

“*Kîjan civak di malekê ji malên Xuda de kom bibe, da ku kitêba Xuda bixwînin û wê di navbera xwe de mûzakere bikin, sekînet her li ser wan peya dibe, rahm xwe bi ser wan de berdide û melaîket xwe li hawîrdora wan didin hev. Xuda jî di navbera yên li cem xwe de bi qencî behsa wan dike.*”[359]

Ebû Îdrîs el-Xewlanî jî wiha vedibêje:

Ez li Şamê çûme Mizgefta Umeyye’yê. Min dît ku ez çi bibînim, wa ye xortekî diran-berraq û rû-liken rûdine. Însan li hawîrdora wî kom bûne, di bara tiştekî de diaxivin. Dema ew diketin îxtîlafê jî serî li wî xortî didan û xebera wî qebûl dikirin. Ez ji mirovên li wir hîn bûm ku ew Mûaz bin Cebel e -Radîyellahû anhû-.

Ez roja peyre zû çûme mizgeftê. Ew ji min zûtir hatibû, nimêj dikir. Ez li hêvîya wî mam ji bo nimêja xwe xilas bike. Piştre ez çûme hizûra wî, min silav lê kir û jê re got:

357. Buxarî, Enbîya, 17.
358. Ahmed bin Henbel, Kîtabu’z-Zuhd, hd. Jimar: 551.
359. Ebûdawud, Witr, 14; Îbnû Mace, Mûqeddîme, 17.

"-Wellahî, ez ji bo Xuda ji te hez dikim."

Mûaz -radîyellahû anhû- sê caran li ser hev ji min re got:

"-Ma bi rastî ji bo Xuda?" Min jî di her carê de jê re got:

"-Erê, ji bo Xuda."

Vêca wî xwe bi cilên min girt, ez bi alîyê xwe ve kişandim û ji min re got:

"-Mizgînî ji te re be! Min ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bihîst ku wî bi rîwayetkirina ji Rebbê xwe wiha got:

«*Hezkirina min ji wan kesan re wacib bûye ku ji bo rizaya min ji hev hez dikin, li cem hev rûdinin, serdana hev dikin û xwe ji bo rizaya min weqf dikin.*»"[360]

Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha dibêje:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَكُونُوا مَعَ الصَّادِقِينَ.

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Xwe ji Xuda biparêzin û bi sadiqan re bibin!**."[361]

Sîrayeta di halan de, wekî ku li jorê behsa wê hate kirin, bi qeder mehebbet û unsîyetê bicih tê. Ji bo mirov bibe mûmînekî kamil, şert e ku mirov bi salihan re di halê unsîyetê de bibe, yanî mirov ji wan hez bike û hewl bide ji wan nêzîk bibe da ku ev temayul xurt bibe û netîceya ku tê arzûkirin jî hasil bibe.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- giringîya pevrebûna bi sadiqan re bi van mîsalan çi xweş îfade dike, dibêje:

"*Mîsala hevalê baş û hevalê xirab wekî însanên misk-hilgir û kurhkêş e. Herçî miskhilgir e, ya ew ji bêhna xwe ji te re îkram dike, yan jî tu ji wî dikirrî.*

360. Îmam Malik, Mûwetta, Şear, 5.
361. Tewbe, 9/119.

*Herçî kurhkêş e, ew jî, yan cilên te dişewitîne, yan jî ji bêhna naxweşa wî sîrayet dike, tê te.*”[362]

Çawa dema mirov li jîyanê be pevrebûna bi salihan re giring e, di qebrê de jî giringîya cîranbûna ji bo qebrên wan jî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha îfade dike, dibêje:

“*Mirîyên xwe di navbera însanên salih de defin bikin.*”[363]

Heta giringîya temînkirina îhtiyacên xwe jî bi wasîteya salihan ev bûyer çi xweş li holê radixe ber çavan:

Li gorî Îbnû’l-Fîras vegotiye, bavê wî ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kiriye, jê re gotiye:

“-Ya Resûlê Xuda! Ma ez (îhtiyacên xwe ji dîgeran) bixwazim?” Mezinê me -eleyhisselatû wesselam- jî jê re gotiye:

“*-Nexêr, nexwaze! Lêbelê heke tu mecbûr bibî bixwazî jî, hema nebe nebe naxwe ji salihan bixwaze!*”[364]

Dîsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

“*Di navbera mirovan de kilîlên zikrê Xuda hene. Dema mirov wan dibînin di cih de Xuda tê bîra wan.*”[365]

Hezretê Qadî Şûreyh, nameyek ji Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- re şandibû û têde jê pirs kiribû (ka ewê di bara meselekekê de çawa hukm bike). Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- jî di bersiva wî de jê re wiha nivîsandibû:

“Bi tiştên di kitêba Xuda de hukm bike. Heke tu di wê de nebînî bi sunneta pêğemberê Xuda hukm bike. Heke tu di kitêba Xuda û sunneta pêğemberê wî de nebînî bi hukmê ku salihan pê hukm kirine hukm bike. Heke ew di navbera hukmên ku salihan pê hukm kirine de jî nebe, vêca heke tu bixwazî dewam bike, hukmê wê bide, heke tu bixwazî jî bi şûn de raweste. Ez di vê qenaetê de me ku tu bi şûn de rawestî û hukm nedî dê ji te re bixêrtir be. Wesselam.”[366]

❀

362. Buxarî, Buyû, 38.
363. Deylemî, Mûsned, I, 102.
364. Ebûdawud, Zekat, 28; Nesaî, Zekat, 84.
365. Heysemî, X, 78.
366. Nesaî, Qudat, 11/3.

Çi dema derwêşekî ku serî li Bayezîdê Bistamî dabû jê re got:

“-Amelekî ji min re wesîyet bike ku ew min ji Xuda nêzîk bike.” Bayezîd -quddîse sirruh- ev şîret ji wî re kir, jê re got:

“Ji bendeyên welî yên Xuda hez bike! Ji wan hez bike da ku ew jî ji te hez bikin. Hewl bide tu bikevî dilên wan! Lewra Ellah Teala, her rojê 360 (sê sed û şêst) caran li dilên wan arifan dimeyzîne. Bila ew di esnaya van meyzandinan de te jî li wir bibîne!..”

Ha bi vê sebebê di terbîya tesewwufî de bi meqsûda taze û zinde girtina hezkirina salikî ji bo cih û sadiqên ku bi wan ve bend e, “**rabîta**”,[367] di halê temrîneke daîmî de hatiye biqaîdekirin.

Divê em bihizirin ku her însanê di rêya guneh û masîyetê de be, bi tesîrên ciwanên vê pêbendîya qelbî dikare ji gellek windhîyên manewî xilas bibe ku belkû telafîya wan ne mûmkin e. Dîsa li kêleka van mirov dikare bi bereketa rabîta’ya qelbî di rêya xêrê de jî bi çendîn qezencên manewî nail bibe, bigihe..

Rabîta, bi tundîya mehebbetê di bihîstin û hisskirinên qelbî de xeteke bala ya manewî tîne meydanê. Di wan şexsîyetên ku di herdu serîyên vê xetê de ne, di îstîqameta “**hev-aynîbûn**”ê de dan-staneke rûhî destpê dike. Di vê dan-standinê de ew mûmînên ku di rewşa kirryar de ne, tereqqî dikin û ew salih û sadiqên ku di rewşa firoşer de ne jî, dikarin bi pîvaneke dîyar zirar jî bikin. Maneya vî halî, ew salihên ku serkehnîya feyzê ne, wan mirovên ku ji hêla maneyî ve bi hezar û yek qirêj û pîsîtîyan têne hizûra wan, paqij dikin, ev halê wan dişibihe halê wî karkerê ku adeta şelwarê karkerîyê xwe dişoyê. Lêbelê zatên salih ên ku ji selahîyeta îrşadê re xwedî ne, bi terbîya xwe qirêj û zengarên manewî yên ku ji wan mirovên ew bi xwe ji wan berpirs in, tên, di alemên dilî yên xwe yên di mesabeya deryayeke fereh de ye, dihelînin û tine dike. Zatên wiha -heke tabîr caiz be- di nav civakê de rola cîhazekî tesfîyekirinê dileyizîn. Aynî wekî giyayên ku hinek maddeyên ku rizî ne, bêhn bi wan ketiye û bi zibil bûne, bi çîçekên rengereng û meyweyên lezzetdar werdigerînin.

Digel ku rewş wiha ye jî dîsa di jîyana her zatê salih û sadiq de ku wan selahîyeta îrşadê heye dewreya uzleteke dirêj yan jî kurt heye. Ev, sade ne ji

367. Ji bo malûmatên hê bêhtir li rûpelên 249-257’an binêrin.

arzûya nêzîkbûna ji Rebb tê, lêbelê di heman demê de ji îhtiyaca heta demeke diyarkirî azade mayîna ji mekrohîyên jîyanê, tê.

Mehebbeta ku bi unsîyetê tê teqwîyekirin, di dawîyê de tê wî halî ku hezker adeta di hebûna hezkirîyê xwe de tine dibe. Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- vî halê ku bes di encama evînê de bicih tê, bi van peyvên xwe îfade dike, dibêje:

"*Di çemekî ku digihe ser deryayê de çemîtî xilas dibe û ew dibe perçekek ji wê deryaya ku rijihaye serê. Nanekî ku em dixwin, di nav bunyeya me de dihele û dibe perçeyek ji wicûda me. Di hebûna kesekî ku hez dike de jî bi qeder tundîya mehebbeta ku ew hestpê dike di hezkirîyê xwe de winda dibe.*"

Hezretê Mewlana bi berdewamî vê hev-aynîbûnê û haletê rûhîyê di halê îfnayê de wiha eşkere dike, dibêje:

"*Evîn, wekî xwînê hate rayên min, bi çermê min tije bû. Wê ez ji min sitand, hebûna min bi hezkirîyê tije bû. Dost dora hemû perçeyên bedena min girt. Ji min, ya ku ji min re mayî, bes navek e. Ji wî biwêdetir tev Ew e..*"

Ha ew keyfîyeta ku di tesewwufê de jê re "**fenafillah**" û "**beqabillah**"[368] tê gotin ev e. Lêbelê ji bo mirov karibe di îstîqameta mehebbetûllah de di vê dereceyê de bipêşve here, lazim e qelb liyaqet û kîfayeteke wisan qezenc bike ku karibe wê tehemmul bike. Ev jî dikare bi temrînên mehebbeta beşerî were bidestxistin.

Bi sebeb ku ew ji qelb re hazirîyekê pêktîne, di nav pîvanên rewa de bi nezara mûsamehayê li evîna beşerî tê meyzandin û ew bi navê "eşqa mecazî" tê bibîranîn. Aynî wekî hezkirina kesekî ya ji malbata wî ye. Lêbelê di dîyarkirina mane û sewîya evînê de dîsa divê mirov di nav mûhtewaya van peyvên Hezretê Mewlana de bibe. Hezretê Mewlana wiha dibêje:

368. Di jêderên tesewwufî de ji bo van îstîlahan tarîfên cuda cuda hatine kirin. Yek ji wan tarîfan jî wiha ye:
**Fenafillah**: Maneya wê di Xuda de fanî û tine bûne ku mirov qelbê xwe ji hemû peywendîyên dinyewî diselixîne, qut dike û xwe ji wesfên nefsanî paqij û xalî dike.
**Beqabillah**: Ew bendeyê ku xwe ji wesfên nefsanî xalî û paqij dike, bi exlaqê Xuda xwedan exlaq dibe. Ev hal jî bi exlaqbûna bi exlaqê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û bi exlaqbûna bi exlaqê Qur'ana pîroz û bi lixwekirina rûhanîyeta wê, teheqquq dibe.

"*Însaf bike, evîn tişteke baş e. Ya ku wê xirab dike jî xuyên xirab ên te ne. Te navê evînê li şehwetê kiriye. Ax! Xwezî te zanîbûya; di navbera evîn û şehwetê de çi mesafeyeke dirêj heye!..*"

"*Evîna îlahî û wecd, mûmînî şîyar digrin. Evînên dinyewî û şehewî jî însanî ehmeq û sersem dikin. Evîn, şewat û ferfitîna wî însanî ye ku ew ji av û axê hatiye aferandin. Ne gera xwînê di rayan de yanî ne berdewamîya jîyanê, lê ya giring bi evînê qelandina kezebê ye.*"

Di zirweya evîna beşerî de, hezker bi qeder dijwarîya xwe di hezkirina xwe de bi hezkirîyê xwe re ji bo hev-aynîbûnê serfiraz dibe. Di tesewwufê de mirîd di mehebbeta mûrşidê xwe de digihîje vê nuqtê, adeta ew di hebûna şêxê xwe de tine dibe. Ev meqam bi "**fena fî'ş-Şeyx**" tê tebîr û îfadekirin.

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- di sohbet û hevdîtineke nû ya digel Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de wecdeke cuda û rewşa îstiğraqê dijîya. Dema ew li hizûra Mezinê me bû jî di şûna ku mehebbet û hesreta wî ji Mezinê me re teskîn bibe, ew hê jî zêdetir dibû.

Çawa dema rojekê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- got:

"*Min bi qeder ji malê Ebûbekr îstîfade kiriye, ji malê hîç ti kesekî din ew qeder îstîfade nekiriye.*"

Hezretê Siddîq ku bi evîna pêğemberê Xuda ji şexsîyet û ez-ezîya xwe bûrîbû, êdî wî di hebûna pêğemberê Xuda de ji xwe re hebûn peyda kiribû, wî li hemberî vê îltîfata nebewî jî xwe bi dest hissa ez jî "mûxateb"ek hatime qebûlkirin û çendan ne rasterast be jî ez ji eğyaran (dîgeran/biyanîyan) hatime hesabkirin ve berda û ew ğemgîn bû.. Wî bi vê hissa xwe di kûrahîya rûhê xwe de hest bi agirê firqetê kir ku ew dişibihe îzdîrab û janeke wekî jana agirê şewatok kir.. Wî di nav fikar û endîşeya wergirtina wî ya ji "**Ğeyr**"an de got:

"-Ya Resûlellah! Ma ez û malê xwe jî sade û sade ne yên Te ne?!"[369]

Hezretê Mewlana bi van peyvên xwe ev heqîqet îfade kiriye, gotiye:

369. Îbnû Mace, Mûqeddîme, 11.

"*Zêr çi ye, can çi ye.. Durr çi ye, mercan çi ye, piştî ew ji bo yar neyên xerckirin, piştî ew ji bo yar neyên fedakirin?!..*" Mirov dibêje qey Mewlana ev halê Ebûbekr resm dikir û rewşa wî dişayesand.

Dîsa rojekê Hezretê Siddîq pê hesiya ku sultanê dilan Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- reht û nexweşhal bûye, ew jî ji ber ğemgînîya xwe ketibû nav nivînê.

Bi sebeb vê hev-aynîbûnê ye ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*-Ebûbekr ji min e, ez jî ji wî me. Ebûbekr hem li dinyayê hem jî li axretê birayê min e.*"[370] Mezinê me, bi vê hedîsa xwe pevrebûna di alema maneyê de û herk û kişîna hal ya ji qelb ji bo qelb te'yîd kirine.

Dîsa dema Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li ser nivîna mirinê bû jî li hemberî vî halê Hezretê Ebûbekr, îltîfat kir, herka dilî ya li hevber çi xweş îfade kir û got:

"*Bila hemû derî werin girtin; bila derîyê Ebûbekr tenê vekirî bimîne!*"[371]

Şêx Sadî'yê Şîrazî jî taybetmendîya sîrayetê ya di halan de wiha îfade dike, dibêje:

"Segê Eshabê Kehf ji ber ku bi sadiqan re bû, wî şerefeke mezin qezenc kir. Navê wî kete Qur'ana Pîroz û kete tarîxê. Ji ber ku hevjîna Lût Pêğember jî bi fasiqan re bû, ew bi kufrê dûçar bû."

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wê zirara ku unsîyet û hogirîya bi ehlê ğefletê re bide qelb, wiha îfade dike, dibêje:

"*(Di axir-zemjanê de) Hinek însan ji ummeta min wê îddîa bikin ku ew di dîn de feqhzan in, ew Qur'anê dixwînin û ew dibêjin:*

*«-Em diçin dev rêvebiran, em para xwe ji malê wan yê dinyayî werdigrin û em wan di nav dînê xwe de têkil nakin.» Haleveku wiha nabe. Çawa ji dar-strîyê sade strî têne berhevkirin, ewên ku ji wan nêzîk bin jî sade wê neçêtîyên wan tehsîl bikin.*"[372]

370. Deylemî, Mûsned, I, 437.
371. Buxarî, Eshabu'n-Nebî, 3.
372. Îbnû Mace, Mûqeddîme, 23.

**Şêx Sadî-yê Şîrazî** di berhema xwe ya bi navê “**Gulistan**”ê de sîrayeta hal, ya ku ji unsîyet û hogirîya bi salih û sadiqan re tê meydanê û “**hev-aynîbûn**”a di encama wê de bi awayekî temsîlî wiha vedibêje:

“Kesek diçe hemamê. Li hemamê yek ji dostên wî kîleke bêhn-xweş didiyê ji bo ew xwe pê paqij bike. Ji kîlê rayîhayeke (bêhneke xweş) wisan enfes (biqîmettir) difûre ku ew gîyanî mis dide. Zilam ji kîlê dipirse:

«-A mûbarekê! Ez bi bêhna xweşa te mest bûm. Heydê bibêje, tu misk î, yan anber î?»

Kîl di bersiva wî de wiha dibêje:

«-Ez ne misk im, ne jî anber im. Wekî ku tu dizanî ez axeke jirêzê me. Lêbelê ez di bin şağeke gulê de bûme û ez her roj bi şevnemên ku ji ğunçeyên gulê dipalîn şil dibûm. Ha ev rayîha’ya ku hûn hiss dikin û ew keyfxweşîyê dide dilan, ya wan gula ye.»”

Çawa maneya di vê mîsalê de jî îşaret dike, bi semîmîyet, teslîmîyet û tewazû’yê ew kesên ku dilên xwe li pêşîya dostên Heq radixin, ew ji bo wan ciwanîyên ku talebkarên wan e, dibin tecellîgeh. Aynî wekî heyva li asîmanî digel ku ronahîyeke wê ji zatê wê bi xwe re nîn e jî lêbelê rûyê wê yê ku li tavê dimeyzîne, tîrêjên ronahîyê yên ku ji wê werdigre, wan dide xuyakirin û belavkirin, para xwe ji taybetmendîyeke tavê werdigre, mirovên wiha (rêber) jî wan şevên ku bi zulmeta beşerîyetê hatine tarîkirin jî -adeta- her yek ji wan dibe qendîl û çirağek..

### j- Bûna Xwedî Ji Bo Exlaqê Xweş

> ***“Roja qiyametê di şehîna bendeyê mûmîn de tiştekî ji exlaqê xweş girantir nîn e. Ellah Teala ji kesê ku bizavên mekroh dike, peyvên mekroh dibêje, hez nake.”*** [373]

Cenabê Heq însan, bi îstîdad û amadekarîyên ziravî, zarafet û kûrahîya ulwî techîz kiriye. Qîmetê esilî yê însanî jî bi qeder geşkirin û bipêşvebirina wî ya ji bo van mezîyetan di alema dilî ya xwe de, çêdibe. Însan ji bo karibe ne di sûretê xwe tenê de; lêbelê di sîreta xwe de jî bibe însan; bi xwe xemilandina bi xuyên sipehî û bi bêtesîrkirina xuyên xirab mûmkin e..

373. Tirmizî, Birr, 62.

Qelbên ji rûhanîyetê tije, ji bo exlaqê xweş, amelê salih û tezahura halên manewî dibin amil û kartêker. Bi vî awayî bende, îcaba aferîna xwe ya di sûretê ji hemû sûretan sipehîtir de, bicih tîne.

Bi dijberî tijebûna qelban ji rûhanîyetê jî, heke di wî de ğalibbûna nefsanîyetê mijara axaftinê be, ew ji bo tezahurên mekroh ên wekî kufr, şirk, xuyên xirab, şehwetperestî û wesweseyan dibe sebeb. Di encamê de heke qelb Rebbê xwe jibîr bike û berê xwe bide ser îstîqameteke ji emanca aferîna xwe re berevajî, hingê ew kuh dibe. Heta ew di hinek caran de dikeve derekeyeke ji ya mexlûqatên dîger berjêrtir jî.

Aferînerê kaînatê însan mûxateb girtiye da ku ew nekeve derekeyeke wiha û da ku ew li xwe vegere, wî şîyar dike û jê re dibêje:

يَا أَيُّهَا الإِنسَانُ مَا غَرَّكَ بِرَبِّكَ الْكَرِيمِ الَّذِي
خَلَقَكَ فَسَوَّاكَ فَعَدَلَكَ فِي أَيِّ صُورَةٍ مَا شَاءَ رَكَّبَكَ.

“**Hey însan! Ew çi ye ku tu li hemberî wî Xudayê te yê ku tu aferandî, ev endamên durust dane te** (bi awayê ku ew bi hev re ahengdar çêkirine) **ev nîzam û îtîdal ji te re bexş kirine û ew Rebbê te yê kerema wî zehf, xapandî?**”[374]

Dîsa Rebbê me di Qur’ana Pîroz de dibêje:

وَاللّهُ يَدْعُو إِلَى دَارِ السَّلاَمِ.

“**Ellah, bendeyên xwe ji bo «daru’s-Selamê»**(warê dilşadîyê ku cennet e) **bang dike**.”[375]

Lêbelê heta ji bo îcabeta bangên fanî û mirin-beran jî hinek merc û şertên wan hene. Herkes ji bo her derê nayê bangkirin. Li merc û şertê lîyaqetê tê gerîn. Naxwe însan bes dikare bi “qelbê selîm” ji bo banga Rebbê me ya “daru’s-selamê” îcabet bike.

Tekane merc û şert ji bo mirov karibe bi maneya heqîqî bi wesfê însanîyetê bijî, divê mirov karibe bi hedefên ulwî û bilind ên dîn û exlaq bigihe. Di

374. Înfîtar, 82/6-8.
375. Yûnus, 10/25.

vê nuqteyê de kemala însanîyetê û mîsala zirweya exlaqê xweş jî Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- e. Cenabê Heq di xusûsa te'yîd û tesdîqa vî wesfê wî de gotiye:

"**Bêşiwar Tu xwedî exlaqekî mezin î**."[376]

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî di hedîsên şerîfên xwe de gotiye:

"*Rebbê min ez perwerde kirim û perwerdeya min çi xweş kir*."[377]

*"Roja qiyametê di şehîna bendeyê mûmîn de tiştekî ji exlaqê xweş girantir nîn e. Ellah Teala ji kesê ku bizavên mekroh dike, peyvên mekroh dibêje, hez nake."* [378]

"*Ez, ji bo temamkirina exlaqê xweş hatime şandin*."[379]

Di tarîxê de tekane pêğember û tekane însanê ku heta bi teferruatên hûrtirîn jî temamê jîyana wî hatiye tesbîtkirin Hezretê Mûhemmed Mûstefa -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Temamê peyvên wî, kirinên wî û hestên wî an-bi-an hatine qeydkirin û wek lewheyeke şerefê ketiye tarîxê. Di Hezretê Pêğemberê de "uswe'ya hesene" yanî şexsîyetê nimûneyî, ji bo temamê beşerîyetê zirwe teşkîl kiriye. Cenabê Heq, di ayeta pîroz de ev yek wiha daye zanîn:

"**Sûnd be ku di Pêğemberê Xuda de ji we re; ji bo mirovên ku gihiştina Xuda û roja axretê hêvî dikin û Xuda zehf zikr dikin «uswe'yeke hesene»** (nimûneyeke sipehî) **heye**."[380]

Zerûrî ye ku mirov para xwe ji heyata qelbî ya Fexrê kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- û exlaqê hemîde'yê wî wergire. Ev jî bes bi qasî hezkirina mirovî ji wî û bi qasî ku mirov karibe bikeve cilê rûhanîyeta wî, bicih tê. Di encama vê înîkas û însîbağê (xwe boyaxkirina manewî) de di mûmînî de xesletên merhemet, şefqet, îkram, sexawet, efûkarî û parvekirina derfetên xwe bi bira-dînê xwe re bi halê sirûr û lezzetê dike. Eshabê kîram, ewlîyaullah, salih û sadiq ji bo vî halî ciwantirîn nimûne ne.

376. Qelem, 68/4.
377. Suyûtî, el-Camîu's-Seğîr, I, 12.
378. Tirmizî, Birr, 62.
379. Îmam Malik, Mûwetta, Husnu'l-Xulq, 8.
380. Ehzab, 33/21.

Ev mûmînên zarîf û rûh-tenik, ji bo karibin ji heqîqeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nêzîk bibin li hawîrdora rûhanîyeta wî adeta wek perperîk tinebûna di wî de ji bo xwe mezintirîn ajar û nîmeta dinyayê jimartine û bi vî awayî ew di lutfên îlahî de ğerq bûne.. Ew mûmînên ku di dirêjahîya tarîxê de karîne para xwe ji uswe'ya hesene'ya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wergirin di derçûnên tekamulê yên xwe de bi zirwe bûne, pêgihanên îlahî yên di fitretê de tekûz kirine û ji bo însanîyetê bûne çirayên qudsî. Dermanê bitesîrtirîn ji bo qelbên nexweş û ğafil, meheb-bet û hezkirina ji wî ye.

Ha ji we re hinek nimûneyên tîpîk ji xulqîyeta bala'ya wî û ji exlaq û bizavên wî:

Rûyê mûbarekê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji hemû rû û çehreyan sipehîtirîn û paqijtirîn bûye. Yek ji zanayên cihûyan Ebdûllah bin Selam, di hicretê de bi meraq pirsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- kiribû, lêbelê çi dema li wechê mûbarekê wî meyzandibû, gotibû:

"Xwediyê vî rûyî derewîn nabe." û ew misliman bûbû.[381]

Lewra sipehîtîya di Wî de, heybet, nûranîyet û letafet di wê dereceyê de bûye ku di bara ew pêğemberê Xuda ye de ji bilî vê îhtiyac bi mûcîze û burhaneke din nîn e.

Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- tiştek arzû nedikir, ev yek di cih de ji rûyê wî ve xuya dibû, dihate zanîn, dema wî tiştek dieciband jî memnûnîyeta wî dihate hisskirin.

Yekem nûra ku hatî aferandin nûra wî ye. Di cismê nezîfane'yê wî de zindetî, heyayeke biqewwet û ezmeke mûdhiş li kêleka hev bûne. Ew ji keça bakîre'ya ku hîcaba xwe lixwekirî hê bi edebtir bûye.

Îzahkirina kûrahîya riqqeta qelbî'ya wî ne mûmkin e.

Wî peyvên fizûlî (zêde) nedigotin, her kelamê wî hikmet û şîret bûne. Di loğetê wî de bi ti awayan gotegot û malayanî nebûne. Wî li gorî aqil û îdraka herkesî peyvên xwe digotin.

Ew mûlayîm û mûtewazî bûye. Di kenê wî de zêdegavîya wekî qehqe-heyê çênedibû. Ew daîm bevken û mûtebessim bûye.

381. Tirmizî, Qiyamet, 42/2485; Ahmed bin Henbel, Mûsned, V, 251.

Kesê ku ew ji nişka ve didît jê ditirsîya. Kesê ku pê re ulfet û sohbet dikir, ji dil û can jê re dibû evîndar û mûhîb.

Wî li gorî dereceya wan hurmet û rêz ji erbabê fezîletê re digirt. Wî ji eqrebayên xwe re jî zêde zêde îkram dikirin. Wî çawa bi ehlê beyta xwe re husna mûamelê dikir, aynî wisan wî bi însanên din re jî bi rifq û lutf mûamele dikir û digot:

"*Yek ji we heta tiştê ji xwe re dixwaze, wê ji birayê xwe yên mûmîn re jî nexwaze nabe mûmînê kamil.*" [382]

Wî xizmetkarên xwe zehf xweş û ezîz digirtin. Wî çi dixwar û çi lixwe dikir, ew bi wan jî dida xwarin û ew li wan jî dikirin. Ew mirovekî comerd, xwedî îkram, bişefqet û bimerhemet bû; lêbelê dema pêwîst dikir ew mirovekî dilêr û bicesaret bû û dema pêwîst dikir jî ew mirovekî helîm û bêhnfereh bûye.

Ew di ehd û weada xwe de sabit bû û di peyva xwe de sadiq û rastgo bûye. Sipehîtîya exlaqîya wî; ew ji hêla aqil û hişmendî ve jî ji temamê mirovan çêtir bûye û ew ji her cure medh û senayan re layiq bûye. Ew xwedî wicûdeke mûbarek bûye ku sûretê wî sipehî bû, sîreta (jînenîgarîya) wî mûkemmel bû û yekî wekî wî nehatiye aferandin.

Ğemgînîya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- daîmî bûye, tefekkura wî jî tim û timî bûye. Heta zerûret nebûya ew nediaxivî. Halê wî yê sikûnetê (huşbûnê) dirêj dewam dikir. Dema wî dest bi axaftinê dikir ew nîvco nedihişt, ew temam dikir û dawî li axaftina xwe dianî. Wî bi peyva hindik gellek mane îfade dikirin. Peyvên wî yeko yeko bûne. Ew ne ji lizûmê zêdetir bûne, ne jî ji lizûmê kêmtir bûne. Digel ku ew bi aferîna xwe mirovekî xuynerm bû jî lêbelê ew mirovekî ğayet biselabet, dijwar û bi heybet bûye.

Dema ew hêrs dibû ji cihê xwe ranedibû. Ji bilî îtîrazkirina li Heq û binpêkirina heqîyê ew ji bo tiştekî din hêrs nedibû. Dema mafekî ku ti kesî ferq nedixistiyê jî dihat binpêkirin ew hêrs dibû. Hêrsa wî jê nediçû heta wî heqî cihê xwe didît. Lêbelê piştî heqî dihate tewzîkirin wî cilê sikûnet û huşbûnê lixwe dikirin. Ew bi ti awayan ji bo nefsa xwe hêrs nedibû. Wî berevanî ji xwe nedikir û ew bi ti kesî re nediket mûnaqeşe û devjenîyan.

382. Buxarî, Îman, 7; Mûslim, Îman, 71/72.

Wî, heta destûr ji xwediyê malê nedistand ew nediçû nav mala ti kesî. Dema ew dihate mala xwe jî ew mûddeta ku li mala xwe dima jî li sê qisman parve dikir; maweyek (mûddetek) ji bo îbadetê Xuda vediqetand, maweyeke dîger ji bo malbata xwe vediqetand û maweya sêyem jî ji bo şexsê xwe vediqetand. Wî ew maweya ku ji bo xwe veqetandibû jî ji bo temamê însanan çi ewam û çi xewas bin terxan dikir, wî ti kes ji wan ji dîdara xwe mehrûm nedikir û wî dilên wan tevan fetih dikir.

Her hal û hereketa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- zikrûl-lah (bîranîna Xuda) bûye.

Ew ji bo rê li ber biadetkirina rûniştina li cihekî diyarkirî bigre carina çêdibû ku ew li her cihekî mizgeftan rûdinişt. Wî nedixwest qudsîyet û pîrozînî ji cih û meqaman re were îzafekirin û dîsa wî nexwest li dîwanan bizavekê bike ku ew ji bo tekebburê bibe medar. Dema ew diçû dîwanekê, kuder vala bûya, ew li wir rûdinişt û wî arzû dikir ku herkes jî wekî wî bike.

Kî, ji bo temînkirina kîjan îhtiyaceke xwe tiştek ji wî bixwesta, dixwaze bila ew bigiring bûya, dixwaze jî bila ew ne bigiring bûya, heta wî ew neanîya cih, wî hizûr nedidît. Heke temînkirina îhtiyaca wî mûmkin nebûya jî wî hewl dida dilê mûxatebê xwe bi xebereke şîrîn xweş bike. Ew ji bo her kesî şirîkê derdê wî bû, hevderdê wî bû. Însan, di kîjan meqam û mewqîî de dibûn bila bûbin zengîn-feqîr û alim-cahil li cem Wî ji ber însanîyeta xwe bi mûameleyeke yeksan û wekhev digihan. Hemû dîwanên wî ew cih bûne ku di wan de fezîletên wekî helîmtî, îlm, heya, sebr, tewekkul û emîntî derbasdar û zal bûn.

Wî, ti kes ji ber eyb û qusûrên wî şermezar nedikir, dema îhtiyaca bi îqazê diyar dibû, wî ev îqaza xwe jî bi awayekî zarîf û bi îmayeke/diberde-avêtineke ku mirovê li hemberî xwe rencîde neke, dikir û digot:

"*Felaketa ku bi serê birayê te yê misliman de hatiye, bi keyfxweşî pêşwazî neke! Ellah Teala bi rahma xwe wî ji wê felaketê rizgar dike û te jî bi mûsîbetê îmtîhan dike.*"[383]

Ew, çawa bi eyb û qusûrên ti kesî yên ku hê derneketine holê re meşğûl nedibû, aynî wisan wî bi tundî lêgerînkirina li ser van cure halan jî qedeğe dikir. Lewra zen û tecessus, di bara dîgeran de bi fermanên îlahî hatibû qedeğekirin.

383. Tirmizî, Qiyamet, 54.

Ew, ji meseleyên ku sewab ji wan hêvî dikir pê ve wekî din di bara tiştekî din de nediaxivî. Dîwanên sohbeta wî di nav wecdê de bûne. Dema ew diaxivî mirovên li hawîrdorên wî wisan jê re dibûne heyran û wisan bi guhê canê xwe lê guhdarî dikirin, bi îfadeya Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ku çûkekî jî li ser serê wan danîbûya, karîbû bi saetan li ser serê wan bimîne û nefire. Ew edeb û heya'ya ku ji wî xwe di eshabê wî de şanî dida di wê dereceyê de bûye ku heta pirskirina sûalê ji wî jî -gellek caran- wek cur'et teleqqî dikirin û çavnêrî dikirin ji xwe re digotin çi baş e ku bedewîyek ji çolê were bi Hezretê Pêğember re sohbet bike û bi wesîleya wî em ji feyz û rûhanîyeta wî îstîfade bikin..[384]

Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- fereh-berîya şefqet û merhemeta wî wiha îfade dike, dibêje:

"Me, di ğezwekekê (cengekê) de ji bo tinebûna kafiran ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- xwest ew nifiran li wan bike. Lêbelê wî got:

«*Ez, ne ji bo lanet lêanînê, lêbelê ez (ji bo aleman) wek rahm hatime şandin*.»"[385]

Ellah Teala di Qur'ana Pîroz de ji bo Mezinê me Hebîbê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

وَمَا أَرْسَلْنَاكَ إِلاَّ رَحْمَةً لِلْعَالَمِينَ.

"**Me, tu ji bo aleman bes wek rahm şandî**."[386]

Dostê Heq Hezretê Ahmed er-Rîfaî ev şîret li ewladên manewî yên xwe kirine, ji wan re gotiye:

"Hey şagirtê îrfanê! Hemû hebûna xwe di rêya Heq de xerc bike. Ji sunneta senîyye'ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re bibe peyrew. Şev û roja xwe di keş û hewaya îbadetê ji xuşûê tije de û bi mûameleya ciwan bibûrîne... Tu, bes bi vî awayî dikarî bi marîfetê nail bibî, bigihî. Heke na, tu nikarî parekê ji vê wergirî. Tu yê nikaribî bi halê wî hevhal bibî, lê tu dibî bendeyekî qusûrdar."

384. Binêrin. Îbnû Sa'd I, 422-425; Heysemî, IX, 13.
385. Mûslim, Birr, 87.
386. Enbîya, 21/107.

Li vir me, hewl daye em bi derfeta peyvên tixûbdar mezîyetên exlaqî yên di aferîna bilinda pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de xulase bikin, ew qeder ew têrneker in, di mesabeya şevneman de ne ku ew ji wê deryayê bi îdraka me ve dipalin, dilop dikin. Sirrê bûna wasilê îllellah, di vê de ye ku mirov karibe bi qelbekî xalis ji kitêba Xuda û ji sunneta seniyye'ya wî Nûrê Hebûnê, yanî ji exlaq û bizavên bilind ên wî nêzîk bibe. Saiq û handerê bingehînê îstîfadekirina ji hissîyata pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hezkirina ji wî û nefret-kirina ji dijminên wî ye.

**Ev alem, ji bo xwedî aqilan seyra bedaîa ye (bi îbret temaşekirina li tecellîyên îlahî, tenzîm û hunerên wî ye), ji bo ehmeqan jî ji xwarin û şehwetê birrîtî ye, îbaret e.**

## 4. BI QELBEKÎ MÛSEFFA MEYZANDINA LI ALEMÊ

Ew însanê ku qelbê xwe her tesfîye dike û dike, di temrîn û ezmûnên beşerî û tesewwufî de pişkdar dibe, bi lutf û kerema Xuda, di dawîya rê de tê halekî wisan ku di sûret û şeklê xwe de însan dimîne; lêbelê ew di meqam, sîret û jînenîgarîya xwe de adeta bi dereceya melaîketan bilind dibe.. Hinek ji wan mirovên di vê wezîyetê de wekî stêrekê ji stêrên di fezaya bêdawî de di alemên xwe de û li hemberî derveyî xwe tam di nav mechûlîyetekê de dijîn. Mirovên wiha nayêne zanîn.

Hinekên din ji van jî ji ber wezîfeyên îctîmaî yên ku hildane ser xwe -bi pîvaneke diyarkirî- têne zanîn û ji zemanên xwe ber bi paşerojê ve wek meşale û çirayeke hîdayetê di jîyana beşerî ya xwe de bi dan dewamkirina memûrîyeta xwe para xwe ji sirra beqa û nemirinê werdigrin.. Ew sebeba dawîna di zincîra sebebên di pişt bûyeran de yanî mirada îlahî fehm dikin. Ji ber vê, ew di nav hizûr û aramîya wiqûfîyet û agahdarbûna ji hikmetê de dijîn. Ew ji gellek lawazîyên beşerî yên wekî telaş û endîşeyan hatine parastin.

Ji bo wan êdî "abes" nîn e. Di tereqqîya manewî ya ku bi pîvana "aferîndeyî xweş bibîne, ji ber Aferînerê wî" de destpê dike, bi giringî-dana bi hikmetê rekeh û qefesa alemê bi hestên ji îbret, mehebbet û heyretê tije, dest bi temaşekirinê dikin.

Wek tecellîyên qudreta îlahî; ew bi awayekî di heyretê de ğerq bûyî li tava ku dertê û li tabloyên rengareng ên ku desteyên tîrêjan di ğurûba û çûna ava'ya xwe de resm dikin, dimeyzînin. Ji ber ku ew bi vî çavî heta li marekî jî dinêrin, dîgerên wan ji vî heywanî hest bi tirsê dikin, lêbelê ew bi xwe ji xal û xetên di çermê vî heywanî de, digel nebûna lingên wî jî ji lezûbeza di hereketên wî de û ji cewwalîyet û gerokîya wî re dibin heyran û meftûn..

Ev dostên Heq, ji ber ku bi awira mehebbet û hikmetê li aferîndeyan dinêrin, ji teselluta heywanên wehşî jî salim û parastî ne. Lewra mehebbet, di mijara bi îtaetkar-kirina berpeyvê xwe de di zemanê me de tesîreke wekî radyasyonê keşifkirî îcra dike.

Di însanên din de halê wekî bi adetî dîtina xarîqeyên kaînatê, di wan de peyda nabe. Bi rastî însanekî adetî û jirêzê dema li tabloyên ku ressam û nîgarkêşekî tebîat teqlîdkirî û anî holê bi teqdîr-kirinê temaşe dike. Lêbelê ew li hemberî kaînatê û Aferînerê wê hest bi heman teqdîrê nake. Ew hemû xarîqeyên li kaînatê wek “ef‘alên ‘adîye” yanî karên normal û jirêzê teleqqî dike, werdigre.

Herçî dostên Heq ên xwedî qelbê mûseffa ne, bi qelbekî wisan dijîn ku (sade) ne li hemberî van tabloyên ku nîgarkêşî anîne holê sirf ji bo navê xwe bide dewamkirin lêbelê ew li hemberî Hunermendê esilî û huner û berhemên ku wî aferandine hest bi heyret û heyecanê dikin. Ew bi wê zewqa hunera îlahî ya xarîqeyên bêdawîn ên ku qudreta îlahî di siriştî de anîne holê, digihin. Ew li pelên rengareng ên giyayên ku sermaye’yê wan heman ax e, li çîçekên van, li menewîşên di van de, li meyweyên bêdawî yên ku ferqdarîyê erz dikin, yên di rengên daran, bêhna wan, lezzetên wan û şeklên wan de, li nexş û nîgarên xarîqeyên di baskên perperîkê de digel ku temenê wê sade du hefte ye, li xarîqûladeyên di aferîna însanî de, dimeyzînin, li xarîqeyên îlahî yên bêdawîn ên wekî dîtina çavan, îdrak-kirina mejî û li eşkerekirinên sirrdar ên di van de mewcûd ku jê re “lîsanê hal” dibêjin, diqqet dikin û guhên xwe ji wan re bel dikin..

Ji bo mirovên wiha kaînat hemû, êdî wekî pirtûkeke ji bo hatin xwendinê mûheyya (amade) ye. Ev, ji îlm û zanistên di satir û destxetan de bûrîne, bi îlmê di sadr û singan de gihane. Ev bûne aynî wekî Mewlana ku ew demekê ji deman di Medreseya Selçûqîyan de mûderrisekî li halê xwe bû, di kitêbên xwe de hatibû veşartin. Lêbelê çi dema dilê wî ji awirên îrşadê yên derwêşê meczûbê bi evînê tije yê bi navê Şems çîk wergirtin û bi agirê evînê dest bi şewitînê dikir. Ew Mewlana’yê ku piştî ew bi vî awayî ji bo keş û hewaya evînê ji nû ve welidî, bi îlawe li ser îkmal û temam-kirina kitêbên îlmê zahirî, wî nifûz li batina wan jî kir û bi vî awayî wî dest bi xwendina sirr û nexşên kaînatê kiriye. Lêbelê di piştî vê de wî karîye şah-berhema xwe ya bi navê *Mesnewî*’yê bîne holê ku ew feryadnameyek e, sirr û hikmetên însan, kaînat û Qur’anê faş û îzhar dike.

Ha ji bo mirov karibe bi van halan hevhal bibe, ev yek jî bes bi qasî ku mûmîn karibe evîn, amadehî û şîyan û jêhatîyên di qelbê xwe de bide înkîşafkirin, mûmkin e.

Dilên wiha, êdî ji hêla bûna wan wek tecellîgeha îlahî adeta bizirwe bûne. Molla Camî, bihayê qelbekî di vê dereceyê de mûseffa (temîz bûyî) -eger heye ji ber ku di hisûla wî de destê beşerî heye- tekrîm kiriye û wiha gotiye:

> "*K'abe bunyadê Xelîlê Azer est*
> *Dil, nezargahê Celîlê Ekber est*"

Wate, "K'abe ji alîyê Îbrahîm Xelîlê kurê Azer ve hatiye lêkirin. Dil jî, nezargeha Xudayê bilind û mezin e."

Di pirtûkên menaqibên sofîyan de mirov dem bi dem li teşbîhkirina dil bi K'abê rast tê. Ev keyfîyet, ji ber şibihandina qelb di însanî de ku însan bi xwe zubde'ya (cewhera) kaînatê ye, bi cihê K'abê yê di kaînatê de ye. Bi rastî ji hêla bûna wan bi tecellîgeha îlahî ve herdu jî di rewşeke navendî de ne. Her yek ji wan nuqteyek e ku tecellîyatên îlahî di wan de temerkuz (bi navendî bûne) kirine. Di van menqibeyan de hinek caran bi uslebeke wisan hatine pêşkêşkirin ku dil li ser K'abê tê tercîhkirin, ev pêşkêşkirin jî ji bo vê ye ku ew hinekê ji bo coşîna aşîqane ye û hinekê jî ew ji bo vegotina giringîya anîna dil bi vê rewşê ye û ew di vê mijarê de ji bo reğbetxistin û teşwîqkirina di wan ğeyret û hewldanan de ye ku dil bi vê rewşê tînin..

Îbnû Ûmer -radîyellahû anhûma- di bara mirovên ku dilên xwe bi halê tecellîgeha îlahî anîne de ev peyvên ku berê wan daye K'abeya mûezzame û gotine, pirr caliba diqqetê ne:

"Tu çi mezin î (ey K 'abe!). Şanê te çi bilind e. Lêbelê şerefa mûmînekî rasteqîne li cem Xuda ji te jî çêtir e." [387]

Qelb, cihê îmanê ye. Ji îfadeya Îbnû Ûmer -radîyellahû anhûma- jî tê fehmkirin ku qelbê mûmînekî kamil ji K'abê efzeltir û çêtir e.

Çawa Hezretê Mewlana, adeta di bara te'yîdkirina vê heqîqetê de wiha gotiye:

"*Heke di te de besîret hebe, K'abeya dil tewaf bike! Maneya esilî ya K'abeya ku ji te were ji ew axê hatiye çêkirin, dil e.*"

387. Tirmizî, Birr, 85.

“*Cenabê Heq, tewafkirina K‘abeya sûretî ya ku tê zanîn û dîtin, li ser te ferz kiriye ji bo tu K‘abeya dilekî ji masîyetê hatî temîzkirin, hatî paqijkirin bidest bixî*.”

“*Vê baş zanibe heke tu, dilekî ku nezargeha îlahî ye biêşînî, bişikînî, heke tu wek peya jî biçî K‘abê, sewaba ku tu qezenc bikî, ew û gunehê şikandina dil, ji hev re serbiser dernakevin*.”

Hezretê Ebdûlqadirê Geylanî -quddîse sirruh- jî şertê vê mezinbûn û bilindbûna dil wiha îfade dike, dibêje:

“Dil, sade ji wan talibên marîfetûllahîyê re dibe K‘abe ku ji masîwa hatine paqijkirin.”

Îsmaîl Heqqî Bûrsewî jî di vê mijarê de wiha dibêje:

“Ew kesê ku çûbe qelb ji wî kesê ku çûbe K‘abê baştir e. Ev jî ji ber vê sedemê ye ku (gel) ji bendeyên salih û dostên Heq re dibêjin: «Me jî ji dilên xwe nederînin.» û bi vî awayî wan ji xwe re bi îstîmdada feyzê û taleba himmetê[388]dikin..”

Hezretê Îmamê Rebbanî -quddîse sirruh- rastîya bi “kaînateke biçûk” bûna însanî wiha îfade dike, dibêje:

“Însan xulaseyeke biçûk-kirî ya alemê ye. Li ser vî esasî her çi tişt li alemê hebe, nimûneyeke wî jî di însanî de heye.”

Ev, wekî ku me li jorê gellek caran îfadekirî destnîşan dike ku di însanî de du cemser hene yek ya “xêr”ê û ya din jî ya “şer”ê ye. Ğaye’ya fermanên dînî û bi îlawe li ser van jî emanca temrînên tesewwufî heta mûmkin bibe bêtesîrkirina temayulên şerrê ye û di şexsîyeta însanî de dabînkirina ğalibkirina xêrê ye. Ji ber vê lazim e ku mirov temamê endamên bedena xwe di çarçoveya îtaetkirina ji bo fermanên îlahî de bikarbîne. Lêbelê di vê mijarê de amel û temrînên bi dil re elaqedar, ji her tiştî giringtir in. Lewra qelbê ku navenda hissîyatê ye, berê însanî dide ser tefekkurê, tefekkur jî berê însanî dide ser îradeyê. Maneya vê, hander û tehfînera bingehîna hemû kirinên îradeyî, qelb e. Ew hiss in ku li wir bicih dibin û li wir koka xwe kûr berdidin. Qelb jî li hemberî îradeyê serbixwetirîn endam e. Rûniştandina wî di çarçoveya fermanên îlahî de, ji rûniştandina endamên dîger giringtir û

388. **Îstîmdada Feyzê**: Bûna talib ji bo feyzê.
**Taleba Himmetê**: Teweccuha mûrşidî xwestin.

zehmettir e. Wekî ku me li jorê îşaret-pêkirî, zehmetîya rêyên tedawîyê ji bo dilên nexweş, ji bo îsbatkirina vê keyfîyetê bes û kafî ye. Lêbelê bihayê her encama ku mirov bidest dixe, ji ber ku bi qasî tehemmulkirina zehmetîyên ji bo gihiştina wî ye, bihayê girtina qelbî di bin zebt û rebtê de jî li cem Xuda pirr mezin e. Ji bo mirovên ku di vê mijarê de biserdikevin lutfkirina Cenabê Heq ya melekîyetê û carinan jî lutfkirina xesletên ji wê jî çêtir ji wan re ji ber vê hikmetê ye..

Qelb û dilê ku navê hebûna manewîya wî ye, di temînkirina seadet û selametîya însanî de ji ber ku ev qeder giring in, êşandina wan ji terefê dîgeran ve bi dîtina temamê erbabên tesewwufê, sûcekî zehf giran hatiye jimartin. Çawa Hezretê Mewlana, mirovên ku dil diêşînin wiha şîyar dike, dibêje:

"*Ew dilê wêran ê ku tu bi qasî qirşekî kayê qîmet pê nadî, ji Erş jî bilindtir e, ji Kursî jî, ji Lewhê jî, ji Qelemê jî balatir e!.. Çendan biçûk be jî dil heqîr negire! Ew, bi heqîrîya xwe jî dîsa bilindê bilinda ye. Dilê wêran, ew heyber e ku Xuda lê dinêre. Canê ku wî çêdike, çi mûbarek e. Tamîrkirina dilê şikestî, yê bûyî du-sed perçe, li cem Xuda ji gellek xêr û hesenatan çêtir e... Huş be! Heke di her mûyekî te de du-sed ziman hebin jî tu bibêjî, dil, dîsa nikare vebêje.*"

Qelb, bi sebeb cihê sultanî yê xwe di bedena însanî de wek mûxatebê tecellîyên îlahî û mekanê eks û xuyabûna wan, hatiye tercîhkirin. Çawa me li jorê bi wesîleyên din jê behs kirî ji bo hebûna îmanê li şertê "tesdîqa bi qelb" tê gerîn. Di ayeta pîroz de jî wek makes (xuyageh) û mûxateba wehyê, ne ew mejî yê navenda tefekkurê, lêbelê ew qelbê ku merkeza tehessusê ye, hatiye zikrkirin.

Xuda di ayeta pîroz de dibêje:

نَزَلَ بِهِ الرُّوحُ الأَمِينُ عَلَى قَلْبِكَ لِتَكُونَ مِنْ
الْمُنذِرِينَ بِلِسَانٍ عَرَبِيٍّ مُبِينٍ.

"(Ya Resûlê min!) **Rûhu'l-emîn** (Cebraîl) **ew** (Qur'an) **bi zimanekî Erebîya eşkere li ser «qelbê te» nazil kiriye ji bo tu ji şîyarkeran bibî.**"[389]

389. Şûera, 26/193-195.

Di terbîya qelb de mesafe qutkirin -wekî ku di temamê failîyetên dîger de jî wisa ye- ji ğeyret û hewldanên beşerî re bi înzîmamkirina nusret, lutf û keremên Xuda ye. Lewra ğeyretên beşerî û amelên salih, digel ku zemîneke manewî teşkîl dikin jî her yek ji wan ji bo lutf û arîkarîyên îlahî wesîleyek e. Li ser vî esasî bende, heke bikeve vê rê bila hêvîya xwe bi lutf û kerema Xuda ve girêbide. Bi cîhetê ku ew lutfên îlahî -çi hindik be, yan jî çi gellek be- her dê wî bîne cihekî, di her halûkarî de qezenc misoger e. Divê ew bi qeder derfetên xwe wan ğeyret û hewldanan bike da ku xwe ji bo kirina lutf û îhsana Cenabê Heq bike mûsteheq..

Pêşîyan digot: «مَالاَ يُدْرَكُ كُلُّهُ لاَ يُتْرَكُ كُلُّهُ» Yanî “heke tiştek bi temamî neyê bidestxistin mirov dest ji pişka bidestketî jî bernade.” Di terbîya qelb de jî divê mirov wiha bihizire û di bicihanîna tiştê ku ji destan tê jî îhmalkarîyê şanî nede.

Di tesewwufê de derbûmeseleke fereh û belav heye, dibêje:

“Bavo himmet bike! Ewlad ğeyret bike!” Yanî yekî ku ji seydayê xwe himmetê çavnêrî dike, divê kêm yan jî gellek xwediyê ğeyretê be. Cenabê Heq ê xwedî lutf û kerema bêdawî di mijara terbîya qelb de jî tişta ku ji bendeyê xwe dixwaze, ji vê birrîtî û îbaret e ku ew bi mûqtezaya heqîqeta; “ewê ku nefsa xwe dizane, Rebbê xwe nas dike.” li pêşberî ezameta îlahî nekarîn û “**hîç**”îtîya xwe îdrak bike û ğeyretên semîmî û xalîsane bike.. Lewra di vê mûcahedeya nefsê de ğeyret ji bende ye, tewfîq û biserxistin jî ji Xuda ye. Bêşiwar ew hesabê ku Cenabê Heq ji bendeyekî bipirse jî bi qeder wan lutfên îlahî dibe ku li ser wî hatine bicih hatin. Ya giring, bendeyek bi qeder ajar û nîmetên ku bi wan gihabe, îstîqameta wî li ser heqqî û xêr be..

**Ya Reb! Di ayneya dilî ya me de çîk û şewqên heqîqetê, sirr û hikmetên herdu cîhanan bi me bide temaşekirin, çavên me û dilên me wisan rohnî bike ku em li alema wîyalî bi cemala te mûşerref bibin!**

**Amîn!**

Gihiştina însanî bi kemalê, di encama li ber çav-girtina pîvan û hessasîyetan de, bi xwe selixandina ji sifetên xam û bi qezenckirina huwîyet û nasnameyeke kamil, mûmkin e.

## C. DI TERBÎYA TESEWWUFÎ DE ESASÊN BINGEHÎN

Hinek sereta û prensîb hene ku ji terefê yekî ji mezinên ehlê tesewwufê Hezretê Ebdûlxaliq Gucdevanî -quddîse sirruh- ve ew hatine tesbîtkirin. Bi taybetî di usûla seyr û silûka ku rêya Nexşî wê taqîb dike de, yanî di terbîya manewî de ku emanca wê xilasbûna ji sifetên xam û gihiştina bi huwîyeta însanê kamil e, li ber çav-girtina van prensîban xwedî ehemmîyeteke mûstesna ye. Em dişên wan wiha rêz bikin:

1. **Hûş der dem e**: Di her nefesa ku tê dan û standinê de ji hêla maneyî ve şîyarbûn e.

2. **Nezar ber qedem** e: Meyzandina çavan li ber lingê xwe ye.

3. **Sefer der weten** e: Di her gavê de bi ber Xuda ve birêveçûn e.

4. **Xelwet der encumen** e: Dema ew di nav gel de bin jî bi Xaliq re bûn e.

5. **Yad-kerd** e: Bi halê zikrê hatina qelb e.

6. **Baz-geşt** e: Metlûb û meqsûd sade bûna rizaya Xuda ye.

7. **Nîgah-geşt** e: Hatin parastina ji xewatirên şeytanî û nefsanî ye.

8. **Yad-daşt** e: Xwe daîm di hizûra Xuda de zanîn e.

9. **Wiqûfa zemanî** ye: Her dem xwe di ber çavan re bûrandin û zemanê xwe baş nirxandin e.

10. **Wiqûfa adedî** ye: Diqqetkirina li hijmara zikrê ye û rîayetkirina wê ye.

**11. Wiqûfa qelbî** ye: Daîm meşğûlbûna qelb bi zikrê îlahî ye û di zikrê de berê xwe dana qelb e.

Em di rawestina bi kurtî ya li ser van prensîbên giranbiha de feydê mûlaheze dikin:

**1- Hûş der dem e**: Di her nefesa ku tê dan û standinê de ji hêla maneyî ve şîyarbûn e.

Mewlana Sadeddîn Kaşgarî vê pîvanê bi vî awayî tarîf dike:

“Dema mirov ji nefesê bikeve nefeseka din jî bi ti awayan divê mirov nekeve ğefletê û daîm bi Xuda re di hizûrê de be.”

Di her nefesê de şîyar bûn, maneya wê ev e ku zakir, gerek di esnaya zikrê de gerek jî di zemanên dîgerên xwe de ji Xuda ğafil nebe. Rizgarkirina nefesan ji ğefletê aramî û hizûrê ji qelb re dibexşe. Di dan-standina her nefesê de bi Xuda re bûna qelb, di hizûrê de; bi bereketa îtaetkirina ji Xuda re, bi îhyakirina nefesan re bend e.. Dema qelbê însanekî bi hizûr û hesta pevrebûna digel Xuda bigihe, hingê wek ji vê re pêbend di hal û hereketên dîgerên wî de jî rastbûn tê xuyanê.

**2- Nezar ber qedem e**: Meyzandina çavan li ber lingê xwe. Maneya vê mirov li ber lingê xwe binêre û wisan birêve here. Naxwe ji bo çavên salikî û wek bi vê ve bend jî dilê wî zêde bi hawîrdoran ve hilavistî nemîne, divê ew di rê de li ber lingê xwe binêre û wisan birêve biçe. Lewra têkilîyên masîwa yên ku ji lizûmê dibûrin, hizûra qelbî tert û bela dikin û ew di navbera mirovî û Heq de dibin perde.

Ev usûl di heddê zatê xwe de, ji taqîbkirin û şopandina terzê birêveçûna Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- birrîtî û îbaret e. Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- dema birêve diçû, heta pêwîst nekiriba, wî li hawîrdorên xwe nedimeyzand, wî bi gelemperî li ber lingên xwe dimeyzand, her wekî ku ew xwe ji jorê ve ber bi xwarê ve berdide wisan bilez û sergiranî birêve diçû.. Wate ev prensîb, ji exlaqê nimûneyî yê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- mûqtebes û wergirtî ye.

Bi rastî çav li kuderê binêre, dil jî li wir dinêre. Ew fîlmên ku çav adeta wekî kamerayekê wan dikişîne, di pirranîya deman de qelb bi cihê nepêwîst ve meşğûl dikin. Ev nêrîn di arşîva dil de cihê nepêwîst dagir dikin. Bi vê

sedemê sağ û salim mana dil ji bela-welatî û perîşantîyê, bi çawanîya dîmenên ku xwe di wir de şanî didin ve bend e.

Lewra dema qelbê salikî bi masîwa ve hilavestî bimîne, weswese destpê dikin. Heke ew xwe bi ğafilan re têkil bike, qesweta hişka dilên wan, xuyên xirab ên wan û fikrên xirab ên wan, wê xwe di qelbê wî de jî bidin xuyakirin. Ev jî heta tu bibêjî bes, tehlûkedar e.

Bi vê sedemê çawa heta mûmkin bibe lazim e ku salik bi edeb û uslûbeke ji ehlê tewazûyê re layiq li ber lingên xwe meyzîne û wisan birêve biçe, aynî wisan îcab dike ew di zemanên xwe yên dîger de jî li awir û nêrînên xwe miqate be. Dema mirov birêve diçe di meyzandina li ber lingên xwe de; tewazû, edeb, heddê xwe zanîn, parastina çavê xwe ji heramîyê û bi sunneta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ve bend-bûn, heye.

**3- Sefer der weten** e: Di her gavê de bi ber Xuda ve birêveçûn. Ev tabîr, çawa wê rêwîtîya ku mirov pê ve diçe ji bo bigihe mûrşidekî kamil îfade dike, di heman demê de ew xwe paqijkirina salikî ya ji exlaqê xirab û ji kesafeta gunehan û berê xwe dana ser exlaqê xweş û ser hestên letîf, yanî berê xwe dana ser huwîyeta esilî ya xwe jî îfade dike. Salik divê ti caran halê manewî yê ku ew têde be, kafî û bes nebîne û ew tim hewl bide bi halê hê sipehîtir bigihe. Yan jî divê ew ji meqamekî ji bo derbasbûna meqamekî bilindtir ê dîger di ğeyreta seferê de bibe.

**Hezretê Ebû Osman el-Meğribî** gotiye:

“Salik, divê hewa û hewesên xwe terk bike û li îbadet û taeta ji bo Xuda vegere. Tişta ku bi peyva «**Sefer der weten**» hatiye qesdkirin, ne rêwîtîya ji memleketekî ji bo memleketî dî ye, lêbelê di alema hundurîna xwe de gihiştina însanî ya bi Xudê Teala ye. Dema salik ji xwe re mûrşidekî kamil bibîne, ewê rêwîtîya zahirî terk bike û dest bi rêwîtîya batinî bike.”

Salik bi vê destûra seyr û silûkê, bi vê îdrakê digihe ku ew di her gava xwe de diçe cem Rebbê xwe, çawa Îbrahîm -eleyhisselam- jî digot: “**Ez diçim cem Rebbê xwe**.”[390]

**4- Xelwet der encumen** e: Dema ew di nav gel de bin jî bi Xaliq re bûn. Yanî dema mirov di nav xelkê de di nav gel de be jî dîsa mirov vê hesta pevrebûna xwe bi Xaliq re mûhafeze bike. Yanî salik, dema bi zahirê xwe bi

390. Saffat, 37/99.

însanan re di halê îxtîlat û têkilîyê de be û dema ew bi karên rojane yên xwe ve meşğûl dibe jî divê ew bi batinê xwe bi vê dîrayetê bigihe ku ew bi Heq Teala re ye. Bi xêra vê, wî pevrebûna xwe bi Rebbê xwe re dewam kiriye û ev yek bi hawîrdorên xwe jî nedaye hisskirin û wî di heman demê de îcabên jîyana beşerî ya xwe jî îhmal nekirine. Çawa kelamê kubarê "**dest di kar de, dil di yar de**" jî bi awayekî zehf wecîz vî halî îfade dike.

Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de bendeyên xwe yên xwediyê vê dîrayeta qelbî, wiha tewsîf dike, dibêje:

رِجَالٌ لا تُلْهِيهِمْ تِجَارَةٌ وَلا بَيْعٌ عَنْ ذِكْرِ اللَّهِ وَإِقَامِ الصَّلاةِ وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ يَخَافُونَ يَوْماً تَتَقَلَّبُ فِيهِ الْقُلُوبُ وَالأَبْصَارُ.

"**Ha ew, ew kes in ku ne ticaret, ne jî dan-standin nikare nehêle ew Xuda di bîra xwe bînin, nimêj bikin û zekatê bidin. Ew ji rojekê ditirsin ku qelb û çav têde zeloq-beloq dibin**."[391]

Di Neqşîtîyê de sohbet û bi îctîmaîbûn esas e. Bi vê sedemê jî ne li cihekî tenha bi tena serê xwe ketina xelwetê, lêbelê heke ew bi zahirê xwe di nava qelebaliğan de bibe jî dîsa bi qelbê xwe bi Heq Teala re dewamkirina xelwetê, meqbûltir hatiye dîtin.

**5- Yad-kerd** e: Bi halê zikrê hatina qelb e. Bi rêya nefy û îsbatê (bi zikrê La îlahe îllellah) piştî deranîna qirêjên masîwa yên ku di qelb de bûne cure pûtek, fikra tekane meqsûd Ellah e, di qelb de bi sabit dibe.

Di encama ji qelb belavbûna herareta zikrê letîf di temamê bedenê de hestên bala yên di bin hişmendîya însanî de meknûz, candar dibin bi halê şiûrekê tên û ew bi qiwama ku xwe di bizavan de jî bidin xuyakirinê, digihin. Lewra însanekî ku zikr û fikrê wî bi Xuda re bûn be, mirov nikare bihizire ku ewê ji exlaqên îlahî yên her wekî merhemet, sebr, sexawet (camêrî) û efûkarîyê bêpar bimîne. Ev hemû jî ji şertên mecbûrî yên bûna bi însanê kamil in. Bi vê sebebê bi zikrê, bi întîbahê anîna qelbî, ji giringtirîn prensîbên tesewwufê ne.

**6- Baz-geşt** e: Metlûb û meqsûd sade bûna rizaya Xuda ye. Di dawîya zikrê nefy û îsbatê de dibêje; «اِلٰهِى اَنْتَ مَقْصُودِى وَرِضَاكَ مَطْلُوبِى», yanî "Xudayê

391. Nûr, 24/37.

min, meqsûda min bes Tu yî û metlûba min bes rizaya Te ye", û di tefekkura zikrê ku hatî kirin de kûrbûn e. Ev ji bo te'kîdkirina maneya nefy û îsbatê û bi maneya rastîn bicihbûna sirra tewhîdê di qelb de ye..

Bi vî awayî, bi nefy û reddkirina hemû ğaye û arzûyên ku di navbera Xuda û wî de bûne perde îtmî'nana qelbî hasil dibe. Li alîyê din bi temrîneke manewî ya wekî zikrê derbaskirina mertebeyan û gihiştina kerametan, bi reddkirina temamê wesweseyên ku dibe werin bikevin dil, ramana ğaye'ya esilî qezenckirina rizaya Xuda ye, careke din di dil de tê nexşkirin.

Bi vî awayî maneya wî zikrê ku hatiye kirin di şiûrê de baş bicih dibe û dema ew xwe di jîyanê de dide xuyakirinê jî êdî pêvemanên fanî û îzafî ji ber çavan dikevin û êdî tê destpêkirin di her tiştî de tecellîyên îlahî têne mûşahedekirin.

**7- Nîgah-geşt** e: Hatin parastina ji xewatirên şeytanî û nefsanî ye. Parastina çavan ji meyzandina li tiştên ne mûnasib e, parastina aqil ji noqbûna di hizrên xirab de ye, daîm di bin kontrolê de girtina qelb e ku ew tecellîgeha Heqq e, û nehiştina ku masîwa wê derê îstîla û dagir bike.

Hedefeke tesewwufê jî parastina qelb ji xewatirên menfî û fikrên fasid e. Parastina qelb ji van jî karekî pirr zor e. Ew kesê ku ji vê re mûwafiq û serfiraz bibe, wî semere û fêkîyê rastî yê xwe bidest xistiye.

**8- Yad-daşt** e: Xwe daîm di hizûra Xuda de zanîn e. Yanî yad-daşt ev e ku bende, xwe tim û daîm di hizûra Cenabê Heq de zanibe, vê di xatir û bîra xwe de bigre û bi vê şiûrê li bizav û hereketên xwe diqqet bike. Ji vê re "mûraqebe" jî tê gotin.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

"**Sûnd be Me însan aferandiye û em wesweseyên ku nefsa wî didiyê jî dizanin. Em ji şah-raya wî jî ji wî nêzîktir in**."[392]

Bi vê sedemê, îcab dike însan hîç ti zemanekî hesta îhsanê, yanî hesta Cenabê Heq di her an û gavê de bendeyê xwe dibîne û her halê wî dizane, winda neke. Bi rastî ev hest, li hemberî gunehan wekî zirxekî sağlem e. Lewra her însan, dema xwe di hizûra îlahî de dizane û dema qelbê wî bi Xuda re be, vêca ewê çawa gunehan bike?

392. Qaf, 50/16.

**9- Wiqûfa zemanî**: Mirov her saeta ku derbas kiribe, wê ji nezara nuqteya "hizûr"ê yan jî "ğeflet"ê bi mûhasebê peyrew bike û zemanê xwe rind binirxîne. Salik, divê qîmetê wextê xwe yê ku têde ye, baş zanibe. Divê ew tiştên nelazim terk bike û zemanê xwe ji bo tişta ji her tiştî biqîmettir terxan û hesr bike. Divê salik dem bi dem di mijara gelo min kariye di çi dereceyê de zemanê xwe binirxînim de jî xwe bikişîne ber hesabê..

Bi maneyeke din wiqûfa zemanî ev e ku salik, her an û gavê ji halê xwe agahdar bibe, zanibe ka halê wî şukirê, yan jî uzrê pêwîst dike û bi mûcibê vê zanîna xwe jî amel bike. Bi rastî divê salik amelên ku wî bi şev û rojê kirine yek bi yek mûhasebe bike, ji Xudayê ku kirina amelên salih jê re hêsan û mûyesser kirine re şukir bike û hewl bide bi hê wêdetiran jî bigihe, ji bo xetayên xwe tobe û îstiğfar bike û bi poşmanî berê xwe bide Xuda.. Her an û gaveke ğayet bi qîmeta temenê xwe, bi taybetî wan zemanên mûstesna yên ku Cenabê Heq bi awayekî taybetî bereket ji wan re bexş kirine, firsend û ğenîmetek zanibe, bi hemû hêza xwe ve di nav şîyarîya manewî de ji bo îdrak û îhyakirina wan zemanan jî ğeyretê şanî bide..

Welhasil bila salik mûhasebeya her an û her halê xwe bike, ji bo an û halê xwe yê ku di hizûrê de bûrandine şukir bike û ji bo zemanên xwe yên ku di ğefletê de derbas kirine jî bibe tobedar. Bi îfadeyeke din, bila ew di halê qebzê de li ser îstiğfaran, di halê bestê de jî li ser şukirê dewam bike. Bi vî awayî, ew kesê ku di her halûkarî de xwe ji ğefletê diparêze, ji endîşeyên rabûrî yên nelazim û ji telaşa îstiqbalê rizgar dibe, bi îhyakirina halê ku wî dijî ve meşğûl dibe ku di tesewwufê de prensîba "divê sofî bibe îbnû'l-weqt" jî vê îfade dike.

**10- Wiqûfa adedî** ye: Diqqetkirina li hijmara zikrê û rîayetkirina li wî ye. Mûrşidên kamil, li gorî halê manewî yê salikî miqdareke diyarkirî ya zikrê bi wan didin.[393] Ji bo zikr jî wê encama ku jê tê hêvîkirin hasil bike, hijmara tekrareke diyarkirî heke tabîr caiz be dozajeke wê heye. Bi vê sedemê ji bo di esnaya zikrê de diqqeta salikî neyê belavkirin û dilê wî nekeve wesweseyan, divê ew li wan pîvanên ku mûrşidî jê re gotine, diqqat bike û wê hijmara ku danê jî rîayet bike. Lewra di zikrê de heke çi qeder bi ewwelîyetê (di serî de) keyfîyet mûhîm be jî lêbelê dema kemmîyeta zikrî yanî dema sînor û pîvaneke wî ya diyarkirî nebe jî carina dîtina hinek rehtî û bêhizûrîyên zêhnî û qelbî jî

393. Mezinê me Resûlûllah, rewşa şexsan li ber çavan digirt û di miqdarên cuda cuda de ji wan re zikr talîm dikirin. Di vê mijarê de li rûpelên 196-197'an binêrin.

mûhtemel e. Ev rewş wekî ku di her tiştî de heye, di zikrê de encama wan xeta ye ku dibe ji îfrat û bêpîvanîyê biwelidin.. Bi vê sedemê divê mirov hewl bide ku zikrê xwe bi keyfîyetê hem jî bi kemmîyetê bi awayê ciwantirîn îfa bike, bîne cih. Lewra di zikr de rîayetkirina li hijmarê ne wek mûcerred hijmartina hijmarê, lêbelê di nav çarçoveya hijmarê de bi kûrkirina “zikrê qelbî” ye. Ev jî çawa ji keyfîyeta zikrê re ne asteng e, eşkere ye ku di esilê xwe de ev şertekî wisa ye ku wê teqwîye dike.

Bi rastî dema zêhn, bi fikrên cuda cuda tije be û dema qelb jî bi endîşeyên curecur bêhizûr û reht be, hingê di wî zikrê ku tê kirin de jî rîayetkirina li hijmarê di pirranîya zemanan de mûmkin nabe. Bi vê sedemê, parastina aqil ji bela-welatîyê û di esnaya zikrê de teksîfkirina diqqetê li ser maneya zikrê, rîayetkirina li hijmara zikrê jî di heman demê de îfadeyeke wê ciddîyetê ye ku ji bo vî karî tê şanîdan.

**11- Wiqûfa qelbî** ye: Daîm meşğûlbûna qelb bi zikrê îlahî ye. Maneya wê ev e ku hesta îhsanê bibe şiûr û pêhiseke daîmî. Divê salik di her firsendê de qelbê xwe di ber çavan re derbas bike û lê binêre ka ew di çi rewşê de ye. Lewra di zikrê de metlûba esilî, agahdarbûna qelb ji yên ku hatine zikrkirin e. Zikr, ne ji dubarekirina wan lefzên ziwa îbaret e ku ew xwe ji dev ji bo qelb bernadin. Bi vê sedemê, divê mirov di esnaya zikrê de di halê mûraqebê de bibe û hewl bide hemû diqqeta xwe bide ser tiştê ku têne zikrkirin. Hezretên Sadatên Kîram, (mezinên camêr) dibêjin; wiqûfa qelbî, yanî di zikrê de berê diqqeta xwe dana li ser qelb şert e. Ji bo mirov naveroka rastîya zikrê biçêje, îcab dike mirov hemû hebûna xwe û bi taybetî jî berê qelbê xwe bide ser Xuda..

Cenabê Heq di Qur’ana Pîroz de dibêje:

وَاذْكُرْ اسْمَ رَبِّكَ وَتَبَتَّلْ إِلَيْهِ تَبْتِيلاً.

“**Navê Rebbê xwe zikr bike û bi hemû hebûna xwe ve berê xwe bide ser Wî**.”[394]

394. Mûzzemmil, 73/8.

Ew salih ên ku nefsa xwe paqij kiribin, di rûh û gîyanan de nîzam û heyatê fetrîm dikin.

## D. MÛRŞIDÊ KAMIL Û RÊBAZÊN ÎRŞADÊ

### 1. MÛRŞIDÊ KAMIL

Ew mûmînê ku di rêya manewîyatê de bipêşve diçe, bi gellek tecellîyên cuda cuda re rûbirû dibe. Lewra dilê însanî wekî okyanûsê ye. Avên vê okyanûsê carina zehf aram û sakin in, carina jî di halê tofaneke bi pêla tirsnak de ne. Bi vê sedemê, ji bo derbaskirina okyanûsê û gihiştina sahilê selametîyê bi qeder sağlemîya gemîyê îhtiyac bi kaptanekî dîrayetmend jî heye. Heke kaptan di esnaya bablîsokan de li ser gemîya xwe hakim nebe, bêşiwar ewê wê bixe binê kûrahîya okyanûsê û têde ğerqbûyî bihêle. Tecellîyên wiha ji bo mirovên hê di serê rê de nayên dîtin. Lêbelê dema ew bi nav vê deryayê ve têne vekirin û dûr diçin hinek zihûratên ku nayên zanîn ka ew Rahmanî ne, yan jî şeytanî ne, hinek cilweyên manewî ku ji ferdekî ji bo ferdekî din diguherin, wekî înqîbaz û înbîsatê[395] hinek hal xwe dest bi şanîdanê dikin. Ha ji bo tesbît û tedbîra van îhtiyac bi rêberîya mûrşidekî kamil heye.

Bila her mûmîn ji bo gihiştina vê îstîqametê xwe bixe bin dîsîpîlînekê. Divê mûmîn hewl bide bi titîzî û bi qeder taqeta xwe jîyana qelbî ya Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- yê ku ji bo ummetê mezintirîn şexsîyeta nimûneyî ye, tetbîq bike. Divê mûmîn bi qeder îmkanên xwe teslîmîyeta Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem-, halê wî yê sebr û şukirê li hemberî bela û diltengîyan, ew îstiğna'ya ku li ber ajar û nîmetan raxistiye dema ew li ber wî wekî deryayê diherikîn jî û tewazû û mehwîyeta wî, di jîyana xwe de pratîze bike.. Bi vê sedemê ji bo mirov karibe astengên di rêya înkîşafa qelbî de derbas bike, divê mirov hewl bide bi tewazû û edeb serî li rêberîya alim, arif û mûrşidên kamil bide ku ew warisên

395. **Înqîbaz** (qebz) û **înbîsat** (best) di salikî de du halên hevdij in. Înqîbaz, bi hestên tirsê û yên wekî wê diltengîya manewî ye; înbîsat jî bi umîdê dilşandîya manewî ye.

pêğember in, û ji dilûcan jî wesîyet û şîretên wan tetbîq bike. Divê mirov ji bo xwe nêzîkbûna ji dostên Heq û bûna di bin terbîya wan de nîmet zanibe. Lewra ew heyva ku ronahîya xwe ji rojê werdigre, çawa ew ji bo hebûna rojê delîlek e, welîyên ku nûra xwe ji nûra Mûhemmedî wergirtine jî her yek ji wan ji bo Hezretê Pêğember şahid û warisek e.

Tesewwuf, dan înkîşafkirina wê îstîdada manewî ye ku ew -çi hindik be, yan jî çi gellek be- her di fitreta însanî de heye. Her dil -heke tabîr caiz be- wekî wê zevîyê ye ku di bin de petrol heye. Lêbelê ji ber ku sondaj lê nehatiye xistin ew petrol, hîç ti zemanî derfeta wê çênabe ku ew derkeve derve. Ha ew petrola di jêr axê de ew îstîdada manewî ye ku Cenabê Heq daye însanî. Ev jî aynî wekî aqil di her însanî de di sewîyekeke cuda cuda de heye.

Mûrşidê kamil e, ewê ku ji bo înkîşafa vê îstîdadê sondaja manewî lêxe û wê cewherê derîne holê. Lêbelê ji bo ev petrol derkeve jorê divê sondaj heta bi wê deverê bigihe ku maden têde heye. Ji bo aletê sondajê li zinarekî nekeve û ker ker nebe jî divê ew sağlem be. Maneya vê, heta tu bibêjî bes mûhîm e ku ew mûrşidê însan ji rêberîya manewî ya wî re were teslîmkirin baladest û dîrayetmend be. Ji bo vê jî hinek qistas û endazên diyarkirî hene. Madem cihê wê hatiye, naxwe em jî dixwazin piçekê li ser vê meseleya giring rawestin:

Mûrşidê kamilê rastî, naskirina wî bi sê wesfên wî mûmkin e:

### Wesfê yekem:

Ji kîtab û sunnetê re îttîbayeke tam e. Jîyana mûrşidekî kamil û amelên wî ji jîyîna exlaqê Qur'ana Pîroz û Sunneta Senîyye birrîtî û îbaret in. Pêbendbûna mûrşidên kamil ji bo Kîtab û Sunnetê di dereceyeke hê bilindtir de ye. Aynî wekî kesekî ku di nav zevîyeke bi berf de tam bi hessasîyet li ser şopa lingê rêberê ku li pêşîya wî diçe, gavên xwe diavêje, pêl şopa gavên wî dike û wilo birêve diçe. Ji lewma ji mûrşidên kamil re "*weresetu'l-enbîya*", yanî warisên pêğemberan tê gotin. Tabîî di naveroka pêbendîyeke wiha de jîyaneke nefsanî nayê jîyîn.

### Wesfê Duyem:

Ew bi peyv û halên xwe, Xuda di bîra mirovan tîne. Bendeyên welî yên Xuda ji bo tecellîyên navên îlahî dibin mezher, ji ber ku ew sifetên cemalî yên

wî ji xwe re bi exlaqî didin wergerandin, tim Xuda di bîra mirovên li hawîrdorên xwe tînin. Çawa dema eshabê kîram, pirs kirin, gotin;

"-Bendeyên welî yên Xuda kî ne?" Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re got:

اَلَّذِينَ إِذَا رُئُوا ذُكِرَ اللهُ عَزَّ وَجَلَّ

"(Bendeyên welî yên Xuda) *Ew kes in ku dema li rûyên wan tê nêrîn, Xudê Teala didin bibîranîn.*"[396]

Ha sîmayê mûrşidekî kamil ê dostê Xuda, îcab dike hizûrê bide dilê mûxatebê xwe, wî biguhêze alemeke manewî û Xuda û axretê bide bibîranîn. Lewra wan xwe bi exlaqê Xuda û pêğemberê wî xwedan exlaq kirine.

Du navên ku ji navên din ên Cenabê Heq zehftir têne zanîn hene. Yek ji wan "Rahman" e, yê din jî "Rahîm" e. Bendeyên welî yên Xuda jî pirr bi merhemet in. Cenabê Heq, "Settaru'l-'uyûb" e. Welîyek jî li eyb û arên dîgeran nagere; lêbelê wan diveşêre. Cenabê Heq, kerîm e; ewlîyaullah jî comerd in û zewqê ji îkramkirinê werdigrin. Cenabê Heq, ğefûr e; welî jî xeta û qusûran efû dikin. Cenabê Heq, helîm e; ewlîyaullah jî xwedî helîmtî ne, bêhnfereh in.

Mûrşidên kamil, dostên Xuda ne. Bi vê sedemê ew, bi gellek alîyên xwe ji însanên dîger ferqdar û cuda ne. Qelbên wan ji Xuda nêzîk in. Di îbadetên wan de xuşû û ciddîyet heye. Ew li bizavên xwe jî pirr diqqet dikin. Ji ber ku ew li ser rêç û şopa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- diçin, dûayên wan jî ji dûayên mirovên dîger bêhtir meqbûl in. Ji ber ku wan wicûdên xwe bi zakir kirine û singên wan jî bi berraq bûne, cihê ku ew diçinê ferah û şadîyê didin wan deveran.

Mûmînekî semîmî, ji siqleta (giranîya) manewî ya têkilbûna bi fasiqan re mûteessir dibe. Haleveku pevrebûna bi mûmînekî salih re hizûrê ji rûhê wî re bexş dike. Lêbelê ji bo mûmînekî pevrebûna bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re ciwanîyeke ji xeyalê biwêdetir e. Tarîfkirina wê zewq û çêja manewî ya ku mûmînek li hemberî şerefa mûxateb bûna ji bo heybeta manewî ya wî Sultanê Pêğemberan wergire, ne mûmkin e. Ha mûrşidên kamil jî, ji ber ku li ser rêç û şopa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-

396. Heysemî, Mecmau'z-Zewaid, X, 78; Îbnû Mace, Zuhd, 4.

diçin, ji ber ku ew ji sunneta senîyye re îttîba dikin û ji ber ku ew ji her kesî bêhtir dikarin ji exlaqê nebewî nêzîk bibin, ew heybet û feyzeke manewî hildigrin ku serkehnîya wan ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-tê. Çawa însanê ku xwe bi elektrîkê girtibe diheje, îcab dike mûrşidekî kamil jî pêşî rûhê însanî bihejîne, piştre jî wî sağ bike û wî bibe, bigihîne asoyên manewî.

### Wesfê Sêyem:

Tayîna manewî ye. Ji bo tayînkirina zatekî wek mûrşid kombûna zumreyekê têrê nake. Ev wezîfe, bi tensîb (çikandin û danîn) û tayîna mûrşidekî kamil çêdibe ku wî îcazeta xwe ji silsîleyeke sahîh wergirtibe ku ew jî heta bi Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dirêj dibe, diçe. Dema tayîneke wiha nebe jî li wir silsîle qut dibe. Bi vê sedemê, hinek mûrşidên kamil, dema mirovekî bi selahîyet û ehil peyda nakin jî ji bo xwe wek xelef ti mirovekî din li pey xwe nahêlin ku ew rêya wan bide dewamkirin. Carina yekî tenê, carina jî -wekî Hezretê Xalidê Beğdadî- bi zihûratan gellek mûrşidan li pey xwe dihêlin. Hikmeta vê jî, keyfîyeteke li Cenabê Heq vedigere.

Xulase; kemala qelbî û bi wî halî hatina wî ku heqîqetên manewî wergire, bi hinek temrînan mûmkin e. Ji lewma îcab dike mirov rêyên kemalatên manewî nas bike û wan tetbîq bike. Ji bo mirov karibe bi selametî astengên di van rêyan de derbas bike jî îhtiyac bi rêberîya dostên Heq heye. Divê her salik, ji bo înkişafa manewî ya xwe wek rêber ji xwe re li mûrşidekî bigere, lêbelê divê ew li mûrşidê ku ew bikeve bin terbîya wî jî diqqet bike ka di wî de hinek wesf hene, yan jî nîn in.

❁

### Çend Îqazên Mûhîm:

Bi xusûsîyetên ku heta bi vir me vegotine mûrşidên kamil, ji ber ku her yek ji wan wek dostên Heq û bendeyên bijarde tebaruz kirine helbet divê mirov li hemberî wan di edeb û hurmetê de qusûrê neke û îcab dike mirov ji hêla maneyî ve ji wan îstîfade bike. Lêbelê divê mirov vê edeb, hurmet û îstîfade'yê, ji sînorên lazim derbas neke û wan di navbera îfrat û tefrîtê de nexeniqîne. Lewra hemû pêğember jî, zatên salih jî, berî her tiştî her yek ji wan koleyek e. Cenabê Heq, ji deryayên îlm, hikmet û marîfetê çi ji wan re bi nesîb

kiribin, bes bi wan gihane. Dem tê, sirrên herdu cîhanan li ber çavên wan û dilên wan têne vekirin, dem jî tê ku ew nikarin ji gavekê biwêdetir bibînin.

**Şêx Sadî** di berhema xwe ya bi navê *Gulistan'ê* de rîwayet dike, dibêje:

Yekî ji Hezretê Yaqûb pirs kir, jê re got:

"-Ya ewê qelbê wî mûnewwer, pêğemberê aqilmend! Dema bêhna gomlekê Yûsuf ji Misrê dihat, te bêhna wî kir lêbelê çima dema ew li ber serê te di bîrê de dihate werkirin te ew nedît?"

Yaqûb -eleyisselam- di bersiva wî de wiha got:

"-Di vê mijarê de nesîbê îlahî yê ku em pê digihin, wekî birûskên lêxer in. Ji ber vê rastî carina ji me re eyan dibin, carina jî têne girtin!"

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî rojekê mirovekî hinek pirs jê kiribûn. Wî di wê an û gavê de ew nizanîbûn, lêbelê wî piştbestin bi hatina qet'î ya wehyê, bêyî gotina lefzê «înşaellah» jê re gotibû:

"*-Sibê were, ezê bersiva te bidim!*"

Lêbelê roja peyre wehy nehat û vê rewşê tam pazdeh rojan dewam kir. Bi vî awayî ew Nûra Hebûnê ku alem ji bo xatir û hurmeta wî hatine aferandin jî bêçare mabû. Paşê wehya îlahî jê re hat, lêbelê vê carê bi îqazê re dest bi hatinê kir û jê re digot:

"(Resûlê min!) **Bêyî xwestina Xuda pê hebe** (bêyî gotina înşaellah) **hîç ji bo tiştekî nebêje; «bêşiwar ezê sibê bikim**.»"[397],[398]

Ev endaz, piştî di bara Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de jî bicih hatibe, naxwe lazim e mirov baş fehm bike ka naveroka wê di çi dereceyê de li ser hemû bendeyan şamil tê. Bi vê nêrînê, divê dema bendeyekî hezkirî yê Xuda dûa dike, nebêje; bêşiwar ewê qebûl bibe, yan jî dema li ser nexweşekî dixwîne, nebêje; bêşiwar ewê şîfa bibe. Lewra ev mijar, divê herdu alî bi îxlas bin û divê ew daxwaza wan jî bi mirada Cenabê Heq re jî mûwafiq be da ku ew meqsûd hasil bibe. Ji bilî vê jî qebûlbûna hemû dûa û îltîcayên ku têne kirin, dibe ku derhal ne li vê dinyayê bicih bên, lêbelê çêdibe ku piştre yanî ew li axretê jî tecellî bibe û divê mirov jibîr neke ku ev keyfîyet jî bi îradeya Heq ve bend in.

397. Kehf, 18/23-24.
398. Binêrin. Îbnû Kesîr, III, 83; Alûsî, XV, 247.

Mijareke giringa din jî, hem pêğember, hem jî ewlîyaullah xwedî meşrebên cuda cuda û xwedî teserrufên cuda cuda ne. Naxwe wesfekî bilind ê ku di yekî ji wan de derdikeve pêş, dibe ku ew di yê din de ne di heman sewîyê de be. Ji lewma çavnêrîkirina heman meşreb û teserrufan ji temaman rast nabe.

Wekî ku di Qur'ana Pîroz de hatiye eşkerekirin; îlmek ji Mûsa -eleyhisselam- re hatiye dayîn, ew di Hezretê Xizr de nîn e; îlmek ji Hezretê Xizr re hatiye dayîn, ew jî di Hezretê Mûsa de nîn e. Bi heman awayî çawa Hezretê Geylanî nabe Hezretê Mewlana, Hezretê Mewlana jî nabe Hezretê Geylanî.. Lewra ew tiştên ku ji herdu alîyan re hatine bexşkirin û xizmetên ku ji herdu terefan hatine xwestin cuda cuda ne. Lêbelê helbet di tevan de jî ğayeya esilî, evdînî û marîfet e. Lewra ew rêyên ku însanî digihînin cem Xuda, bi qasî hijmara nefesên mexlûqatan zehf in.

Mijareke giringa din jî ev heqîqet e ku ji bilî pêğemberan hîç ti bendeyek ne di bin temînata îlahî de ye. Yanî heke bendeyek bigihe zirweya zirweyan jî dîsa ew di her an û gavê de bi xetera şemitîna lingên xwe re rûbirû ye. Çawa Bel'am bin Baûra ku ew di demekê ji deman de mirovekî salih bûye; lêbelê piştre wî bi xebera nefsa xwe kiribû û ew li xusrana ebedî ketiye. Ev bûyer, di Qur'ana Pîroz de wiha hatiye eşkerekirin:

"**Nûçeya wî yê ku me ayetên xwe dabûnê, ji wan re bixwîne; paşê ew ji wan derket, paşê şeytan bi dor wî ket, paşê jî ew bû ji rêşaşan. Heke me xwestibaya, me bi ayetên xwe mertebeya wî bilind dikir, lêbelê ew ma bi dinyayê ve û li pey hewesa xwe çû. Meseleya wî wekî meseleya seg e; heke tu bi ser de biçî, ewê bike helkehelk, heke tu bi ser de neçî, dîsa ewê bike helkehelk!**."[399]

Nimûneya qisseya Qarûnî ya ku di Sûretê Qeses de hatiye ragihandin jî wiha ye. Ew jî bendeyekî salih ê pirr cihêwaz û mûstesna bûye, lêbelê wî wek îsyankarekî sefîl, ğafil û rezîl seadeta ebedîya xwe perîşan kiriye. Cenabê Heq ew digel wê serweta wî ya ku wî pişta xwe pê ve girêdabû, pê bawer bûbû, pala xwe didayê û xwe pê qure dikir, xistiye binê erdê. Ji lewma însanek xwedî kîjan meqam, mertebe û çêtirbûnîya manewî dibe bila bibe, di her halûkarî de nefsa di hundurê bendeyan de daîm di kemînê de li ber însanî veketiye û çi dema ew firsenda xwe bibîne jî dikare dilan li xusranê bide. Li

399. E'raf, 7/175-176.

ser vî esasî Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî bi vî awayî xwe diavêt ber penaha Xuda û wî ji bo xwe wiha dûa dikir, digot:

“*Xudayê min! Ez rahma te hêvî dikim. Bi qedar ku ez çavê xwe vekim û bigrim jî min bi hewaya nefsa min re bi tenê nehêle! Her halê min îslah bike! Bêşiwar ji Te pê ve ti îlah nîn in..*”[400]

Dostên Heq jî daîm di çarçoveya naveroka vê hedîsa şerîf de dijîn û hîç ti zemanî xwe bi dest wehmeke wiha ve bernadin nabêjin; «karê me temam bû.» Lewra çendan seyr û silûkên xwe xilas kiribin jî lê dîsa ewên ku xwe bi dest vê wehmê ve berdin tim di nîvê rê de mane.. Lêbelê ewên ku dibêjin; «hê ez nebûme» û bi vî awayî kêmasîyên xwe dibînin, ew di nav nekarînê û halê îltîcayê de bêrawestan rê qut kirine, çûne. Ev yek wisan giring e ku heta sertacê pêğemberan Hezretê Mûhemmed Mûstefa -sellellahû eleyhî we sellem- jî digel tezahurên evdînîya wî ya ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî jî dîsa wî bi şev îbadet dikir heta lingên wî diwerimîn û wî hîç ti zemanî kirina nimêja şevê terk nekiriye, wî ji Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- re ku wê sebebê vî halê wî jê pirsîbû, gotiye:

“-*Ya Aîşe, ma bila ez nebim bendeyekî şukirdar*?”[401]

Dîsa bi rîwayeta ezwacê tahîratên wî Fexrê Kaînatê di piştî nazilbûna vê ayetê de:

“**Bi hemdkirinê Rebbê xwe pakbidêre; meğfîretê ji wî bixwaze! Lewra her ew e, yê ku tobeyan zehf qebûl dike**.”[402] Ew her an û gavê ji an û gava berî wê bêhtir bi hemd û sena ve meşğûl bûye.

Naxwe di rêya Heq de kî bi kîjan dereceyê bigihe bila bigihe, hîç ti zemanî ew ji berpirsîya evdînîyê xilas nabe û ew nikare di amelên xwe de hîç ti kêwkirinek û mûafîyetekê îhdas û peyda bike. Yanî ferz, wacib, sunnet, heram, helal, mûbah, mûsteheb û hemû destûr û mûkellefîyetên îlahî yên dîger di rêya evdînîyê de li ser milên her kesî hatine danîn, ew heta wextê mirinê jî ji ser milê ti kesî bi şûn de nayêne standin. Ji lewma mûrşidên kamil ên rasteqîne, di temamê temenê xwe de hewl didin wek peyrewê vê fermana Xuda bijîn:

400. Ebûdawud, Edeb, 100-101.
401. Mûslim, Mûnafîqûn, 79.
402. Nesr, 110/3.

“**Bi hemdê Rebbê xwe zikr bike, ji secdebiran bibe û heta mirin were te jî her ji Rebbê xwe re li ser evdînîyê dewam bike**.”[403]

Rêberên manewî yên wiha, ji ber xizmeta ku ji gel re dikin, ti talebeke biçûçiktirîn jî ji wan nakin. Heta ji ber evdînîya xwe ya ji Rebbê xwe re jî ti hemberekê çavnêrî nakin. Lewra ew dizanin ewên ku amelên salih dikin û hemberê amelên xwe çavnêrî dikin, biha û qîmetên kirinên xwe erzan û kêm dikin. Li ser vî esasî Hezretê ‘Elî û Hezreta Fatima digel ku ew bi rojî bûne jî dîsa fitara xwe şevekê dane belengazekî ku hatibû ber derîyê wan, fitara xwe şeveke din dabûne sêwîyekî ku hatibû ber derîyê wan, fitara xwe şeva sisêyan jî dabûne êsîrekî ku hatibû ber derîyê wan, sê rojan li ser hev fitara xwe bi avê kiribûn.. Ji bilî vê jî li hemberî teşekkurên wan kesan jî ev bersiv dabûn, ji wan re gotibûn:

“-Me wiha nekir ji bo ku em ji we teşekkurê çavnêrî dikin. Tekane meqsûd û nîyeta me, rizaya Rebbê me ye..”[404]

Welhasil mûrşidên kamil ên rasteqîne, bi awayê ku şexsîyeteke nimûneyî radixin ber çavan zirweyên dinyaya rûhî ne, ku wezîfeyên terbîye û tezkîyê yên pêğemberan didin dewamkirin. Di heman demê de dostên Heq, bi Xuda û sifetên bilindên wî wek arif û çavnas, ew kes in ku di îmana xwe de gihane dereceya îhsanê. Bi vî awayî ji cem Heq ji wan re îlmê ledunî, hikmet, marîfet û nîmetên dîger hatine bexş-kirin. Lêbelê hîç yek ji wan jî ne di dereceya sihabîyan de ne. Helbet sehabe jî ne di dereceya pêğemberan de ne û pêğemberên din jî ne di meqamê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de ne. Herçî Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye, ew jî sade bende û pêğemberê Heq Teala ye.

Li ser esasê vê heqîqetê divê mirov xwe ji qîmet dana zêde ji bo însanan dûr bigre û divê mirov bi tevan re li gorî halê wan mûamele bike. Yanî Weysel Qeranî û Îmamê Ezam ê ku hiqûqê Îslamê tedwîn kiriye jî hîç ti zemanî di dereceya sehabîyekî de nabin. Car caran hinek ğafil rêz, îhtîram û -qaşo-pêbendîya ku ji bo wan mirovên ji xwe re bi seyda dizanin, radixin ber çavan jî her wekî ku wan ji sehabîyan çêtir heta wan ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî çêtir bigrin, ji xetayê biwêdetir dalalet û rêşaşîyek e.. Ev dalalet, bi berevajî teqsîmata Cenabê Heq, îfrateke ğerîb e ku di nav mûbaleğekekê de însanî ji heqîqetê dûr dikin. Ji lewma pêğemberê Xuda

403. Hicr, 15/98-99.
404. Binêrin. Însan, 76/8-11; Wahidî, rûp. 470; Zemexşerî, VI, 191-192.

-sellellahû eleyhî we sellem- bi endîşeya ku wê bikevin halên wiha medh û senayên ğafîlane men kirine û ew mijarên ku werin medhkirin, heke ewê sebebîyetê bi nefsanîyetê bexş bike, wî ew kesê ku medh bike qesd kiriye û gotiye:

"*Axê bi ser rûyê wî de bireşînin!*"[405]

Lewra ew îltîfatên ku nefsê tehrîk bikin, ew îmza ne, ku ji bo felaketa qelbî têne avêtin.

405. Ahmed b. Henbel, Mûsned, VI, 5.

**Alema hebûnê, bi mehebbet û rabîtayê li ser pêyan radiweste. Lewra rabîta, tezahureke wê mehebbetê ye ku ew cewhera hebûnê pêktîne. Ew dan dewamkirina tazetî û zindetîya mehebbetê ye.**

## 2. RÊBAZÊN ÎRŞADÊ

### a. Mehebbet-Rabîta

Dema em li ğaye û cewhera tesewwufê dinêrin; em di seyr û silûka wê de hander û tahfînera bingehîn “mehebbet” û ğaye’ya nîhaî ya wê jî “edeb”ê dibînin. Ji van jî “mehebbet” wasîte ye, “edeb” jî encam e. Li ser van herdu mefhûm û têgiha’yan çi were gotin hindik e.

Hezkirina ji heyberekî çi qeder zêde bibe, ew qeder nêzîkbûna ji wî, xwe kirina aîdê wî, elaqe danîna bi wî re, xwe şibihandina bi wî jî zêde dibe.

Mesela mirîdekî ku zehf zêde ji mûrşidê xwe hez dike, ji helwestên mûrşidê xwe, -çendan nuqsan be jî- ji mirovên ku helwestên wan dişibihin helwestên mûrşidê xwe jî ji ber ku ew helwest mûrşidê wî bibîr tînin, ji wan hez dike. Heke ew li xizmekî mûrşidê xwe rast were, wekî ku ew li hacîyekî rast hatibe ku ew ji nû ji serdana K‘abê hatibe wisan wî di îltîfatan de ğerq dike. Xwedîbûna ji bo tiştekî ku mûrşidê wî bikaranîbe, di rûhê wî de sirûreke bênîhayet tîne meydanê. Ev keyfîyet, dişibihe wê sirûr û keyfxweşîyê ku Weysel Qeranî li hemberî wê Xirqeya Seadetê ya ku ji terefê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re hatibû şandin, hestpê kiribû..

Bi zêdebûna mehebbetê re wek parelel, çawanîya “xwe aîd dîtina”wî heyberê ku tê hezkirin jî her ku diçe ji rêjeya bihêztirîn berev ya lawaztirîn şimûlekê qezenc dike. Li vir, em vê jî îfade bikin ku ev yek me dibe ser du

têgihayên sofîyan: «**Îşqa Mûtleq**» û «**Îşqa Mecazî**». "Îşqa Mûtleq"[406] ew hezkirin e ku temaman di nav xwe de dihewîne. Ew mehebbet wekî daîreyekê ye ku mehbûb dikeve navenda wê û ew heta bi bêdawînîyê berfereh dibe ji bo mirovên li hawîrdora vê navendê tev bikevine navê. Vêca hîç ferq nake; ew çi nêzîk bin, çi jî dûr bin. **Yûnus Emre** di malikeke şiêra xwe de vê rastîyê wiha îfade dike:

"*Aferîndeyî xweş bibîne*
*ji bo xatirê Aferînerî*"

Ev ew hal e ku sifet, mahîyet û amelên wan çi dibin bila bibin, mirov karibe ji bo xatirê Aferînerî ji hemû aferîndeyan hez bike û wan bi merhemet û dilovanî hemêz bike. Ev merhela dawîn e ku evîndar pê digihe. Hema bibêje, îfadeya halê her nuqteya ku ew heta bi vir dibîne "**Îşqa Mecazî**" ye.

Ji wê dema ku salik bi evîn û hezkirinê bi mûrşidê xwe ve were girêdan û pê de êdî vê "îşqa mecazî" destpê kiriye. Ev îşq û evîn jî "mecazî" ye. Lewra qelb, ji ber ku ew yê Xuda bi tenê ye, meşûqê heqîqî, ji Xuda pê ve çênabe. Naxwe hezkirîyên din û ew halên ku bi wan hezkirîyan re têne jîyînê wekî wan pêpelingên derenceyekê ne ku di derketka (derketingeha) serayekê de însan pê ve hildigere, diçe serayê. Ev ew hîndekarî ne, ji bo bi saya wan qelb ji mehebbetûllahîyê re were hazirkirin. Heke tabîr caiz be, ew ğeyret û hewldan e ku mirov pê ji "Leyla"yê biçe, bigihîje "Mewla"yî. Di van ğeyret û hewldanan de merheleya bi feyyaztirîn, milkbûna ji bo mûrşidekî kamil e û bi wî re jîyîna heyecana manewî ya unsîyet û mehebbetê ye. Berhemdartirîn tezahura vê jî rabîta ye. Gihiştina mehebbetê ji bo dijwarîyeke ev qeder ku ew bi elaqeyên jirêzê û besît neyê qiyaskirin, "rabîta" bi xwe ye.

Maneya luğewî (ferhengî) ya rabîta'yê, bend û têkilî ye. Li ser vî esasî, li kaînatê hîç ti zindîyekî bêrabîta nîn e. Her tişt pevre di halê îrtîbatê de ye.

Bi îfadeyeke dîger rabîta, tezahureke mehebbetê ye ku mehebbet jî cewhera hebûnê pêktîne. Rabîta dan dewamkirina tazetî û zindetîya mehebbetê ye.

Sê cure rabîta hene:

---

406. Di Qur'ana Pîroz de Xuda pêwîstîya ku hezkirina mûmînan ji Xuda di dereceyeke zehf bipêşve ketî de be bi vê ayetê; "وَالَّذِينَ آمَنُوا أَشَدُّ حُبّاً لِلّٰهِ" "**di mûmînan de jî hezkirina ji Xuda ji her hezkirineke din dijwartir e**." (Beqere, 2/165.) eşkere dike ku hezkirina di vê dereceyê de di zimanê me de bi awayê "îşqa îlahî" tê îfadekirin..

### 1- Rabîta'ya Tabîî ye:

Ew hezkirina ferdî ya ji nêzîkên wî ye. Ew berhema saîq û handerên fitrî ye. Ew fena (wekî) hezkirina dêyekê ya ji zarokên wê ye.

### 2- Rabîta'ya Jirêzê (Suflî) ye:

Ev bendbûna bi temayulên şeytanî yên qedeğebûyî ve ye. Ev wekî meşğûlbûna qumarbazî ye ku qelbê wî tim û daîm bi qumarê dilebike û heta zar û zêçên xwe jî jibîr dike.

### 3- Rabîta'ya Ulwî ye:

Rabîta û bendbûna bi wan wesîleyan ve ye ku bi mefhûmên mûqeddes û hestên ulwî însanî dibin digihînin Xuda. Ji bo îstîfadekirina ji rûhanîyeta wan kesên ku bi qelbê xwe bi meqamê teclîye (bi cîlabûn) û mûşahedê wasil bûne, bilfiêlî yan jî ji hêla maneyî ve bi awayekî daîmî digel wan bûn e.

Em li vir hewl didin ji hersê cureyên rabîtayê ku me li jorê jimartin li ser cureyê dawîyê rawestin û wê vebêjin. Ev jî wê mûmarese û kirina ku salik wê bicih bike îfade dike ku ji bo ew bi awayê layiq ji mûrşidê xwe îstîfade bike, divê mehebbeta mûrşidê xwe di dilê xwe de daîmî taze bigre.

Rabîta metodek ji metodên perwerdeya tesewwufî ye, di her terîqetê de digel ku kêm-zêde navê wê û tetbîqa wê ferqdarîyekê erz dike jî lêbelê bi gelemperî maneya wê ev e ku mirîd mûrşidê xwe li ber çavên xwe candar bike, hal û helwestên wî di bîra xwe bîne û bi hestên ulwî hevhal bibe.. Bi vî awayî taze girtina hurmet û mehebbetê ji mûrşidî re zindetîyeke manewî bi mirîdî dide qezenckirin.

Însan, heybereke li ber tesîrê vekirî ye. Wekî ku di hinek nexweşîyan de jî wisa ye, di halên însanî de jî taybetmendîya sîrayetê heye. Dan û standina manewî di navbera rûhan de rastîyek ji wan rastîya ye ku jîyan nikare wê înkar bike. Bi taybetî temayulên rûhî yên xurt di şexsîyetên feal û mûessir de ji wan bi qeder rêjeya îstîdad û amadekarîya mirovên ji wan nêzîk -kêm yan jî zêde- diçe wan jî. Ev întîqal û guhastin, bi mûsbet yan jî menfî bûna halê ku sîrayet dike ve jî ne bend e. Di her halûkarî de întîqal bicih tê. Bes bila di navberê de peywendîyên mehebbet û unsîyetê hebin.

Mesela, halên mirovên ku heta tu bibêjî bes bi merhemet, xwedî ferağet û fedakar in, bandorê li cemaetên ku ew di navê de bin, dike. Rabîta ku tezahureke mehebbetê ye, di bara mezîyetên exlaqî yên wiha de ew ji bo pirrkirina dan û standina rûhî, bilezûbezkirina wê û hê bêhtir wergerandina van bi exlaqî ye. Bi vê sebebê her mûmînê ku xwedî aqilê selîm be, divê ji kesên salih ên xwedî teqwa hez bike, unsîyetê bi wan re deyne û hewl bide vî halê înîkasê derîne dereceya ezamî.

Çi hikmet e, ew aqilê ku ji pekîna herîyê û ketina wê li cilê temîz û sipehî bêzar dibe, heke ew bi nûra wehyê rohnî nebûbe; feqet di pirranîya caran de ew qelbê ku bi gunehan hatiye reşkirin û ew xuyên mekroh ên di wî de rûh îstîla dikin, lêbelê di pirranîya caran de ew hest bi teessureke biçûktirîn jî nake.. Lewra ew, ji ber ku ji cure narkozeke manewî ya telqînên nefsanî û şeytanî re rûbirû ye, ew ferqê naxe vê tengasîya rûhî. Bi vê sedemê îcab dike mirov çavên dil veke û kar û zîyana ebedî rind hesab bike. Lewra ev sîrayetên ku hem dikarin mûsbet, hem jî dikarin menfî bicih werin, ew cure “transfereka şexsîyetê” ne, însan di tercîhkirina wan de mûxeyyer û serbest hatiye hiştin. Lêbelê Ellah Teala, tercîha rasta vê jî di Qur’ana Pîroz de wiha daye zanîn, gotiye:

“**Gelî mirovên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û bi sadiqan re bibin!**..”[407]

Heke em bala xwe bidin serê, Cenabê Heq di vê ayeta pîroz de ji bendeyên xwe re negotiye; “**sadiq bibin!**” lêbelê ji bo parastina teqwayê ferman kiriye, gotiye; “**bi sadiqan re bibin**.” Lewra gava pêşîna ku di rêya sadiqbûnê de were avêtin, bi sadiqan re bûn e, yanî bi sadiqan re di nav unsîyeteke bi mehebbet de bûn e. Sadiq-bûn jî encameke xwezayî ya vê rewşê ye. Çawa peyva; “tirî li tirî dinêre heta reş dibe” jî îfadeyeke vê rastîyê ye.

Pevrebûna bi salih û sadiqan re, di sernermkirina nefsê de wekî radyasyonê ye, mûşahedeya wê bêîmkan e, lêbelê encama wê bandoreke mûtleq îcra dike. Li hawîrdora însanên salih bûn, mûşahedekirina hal û helwestên wan û heta meyzandina li çehreya nûranî ya wan jî ji vê mijarê ne. Ji ber vê ye ku bûna li hizûra mezinên manewîyatê nîmeteke mezin e. Lewra hal sîrayet dikin. Çawa mirovê ku li gulistanê (bexçê gulan) dileyîze, bi ser wî de bêhnên gulan



407. Tewbe, 9/119.

dibarin, difûrin, aynî wisan dîwana salihan jî wekî bazara dan û standina manewî ya di rûhan de ye.

**Hezretê Xwace Ûbeydûllah Ehrar** wiha gotiye:

“Fermana Qur’ana Pîroza di vê ayetê de:

«**Gelî mirovên ku îman anîne, ji Xuda bitirsin û bi sadiqan re bibin!**»[408], «**bi sadiqan re bibin!**» pevrebûna daîmî îfade dike. Yanî pevrebûn, ji ber ku bi awayekî mûtleq hatiye zikrkirin, ew hem wek fiêlî, hem jî wek hukmî du-alî ye. Pevrebûna fiêlî, ji amadebûna qelbî ya bilfiêl bûna li dîwana sadiqan îbaret e, pevrebûna hukmî jî ji texeyyulkirina halên wan ya di ğiyaba (ne hazirîya) wan de îbaret e.”

Li ser vî esasî çawa pevrebûna zahirî bi dostên Heq re zerûrî ye ku mirov ji edebê bi hestên bilind bi wan re bibe, divê mirov wî halî di ğiyaba wan de jî bi awayê pevrebûna qelbî bide dewamkirin. Lewra dibe ku her demê pevrebûna fiêlî bi dostên Heq re mûmkin nebe. Di vê rewşê de ji bo dan dewamkirina pevrebûna qelbî îhtiyac bi **rabîta**yê heye.

Lêbelê wekî ku me berê jî îfade kiribû di perwerdeya tesewwufî de pevrebûneke fiêlî ya rijî û ziwa jî ne meqbûl e. Lewra hinek mirov hene li ber çoka mûrşidekî kamil dibin; lêbelê ji ber ğefleta xwe ti parekê ji xwe re wernagirin. Li alîyê din çendîn mirîd jî li welatên dûr hene ku bi wesîleya hurmeta fereh, hesret, evîn û pêbendîya ku ji mûrşidê xwe re hestpê dikin, dikarin bi nesîbên mûstesna, halên sipehî, îlham û hissên manewî nail bibin, bigihin. Peyva ku mezinan gotiye; “yê li Yemenê li cem min e, yê li cem min jî li Yemenê ye.” Di esasê xwe de tam vê îfade dike. Bi vê sebebê ya mûhîm, li kuderê dibe bila bibe, jidest-nedana hesta pevrebûna qelbî ye.

Ji bilî vê jî, ew însanên ku ji hêla maneyî ve bi dîrayet in, îstîdada wan ya ku ji dil û can dixwazin mirovên li hawîrdorên xwe bi halê xwe hevhal bikin di dereceyeke ezamî de bibe jî lêbelê ev bi tena serê xwe têrê nake. Lewra întîqala halî ya di tesewwufê de herkeke manewî ya wisa ye ku hasilbûna îstîfadeya ezamî ya ji leza vê herkê û tesîra wê, bi qeder dîrayeta mûrşidî, bi îstîdada mirîdî û sewîya mehebbeta wî ve jî bend e. Ji ber vê her mirîd, -sirf bi sedem mirîdbûna xwe- bi heman merheleyê nagihe.. Ferq, ji îstîdad û sewîya mehebbetê diwelide ku ew ji mirîdekî ji bo mirîdekî din diguhere. Heke lazim be mirov vê bi nimûneyekê bibêje; di navbera vê û noqkirina kesekî ya

408. Tewbe, 9/119.

sewîlê xwe di goleke biçûk de, yan jî di okyanûseke bêserî û bêbinî de ji bo wergirtina avê, ferq nîn e. Di herdu halan de jî sewîl bes bi qasî hecmê xwe avê werdigre. Bi vê sedemê îcab dike mirîd, biîstîdad be û hem jî hewl bide vê îstîdada xwe jî bikarbîne.

**Hezretê Yûnus Emre** çi xweş dibêje:

*Heke qedeh li ber çeşmê were danîn,*
*Heke tu ji dagirtina qedehê kor bî*
*Heke ew hezar salan li wir raweste jî*
*Dîsa ew bi tena serê xwe tije nabe*

❁

Di rabîta û mûraqebeyan de usûleke dîgera ku serî lê tê xistin jî xwendina silsîleya şerîf e.[409] Ev, ji bo para xwe wergirtina ji înîkasa halên sipehî yên wan zatên ku têne bibîranîn e û para xwe wergirtina ji wê rahmê ye ku tê hêvîkirin ew bi dibîranîna salihan peya bibe were ser dilan.. Çawa yek ji alimên mezin **Sufyan bin Ûyeyne** gotiye:

"Rahm li ser wan dîwanan peya dibe ku di wan de salih têne zikrkirin."[410]

Di esasê xwe de te'lîfkirina (nivîsandina) curecur kitêbên ku menqîbeyên dostên Heq di nav xwe de îhtîwa dikin, ji bo bicihkirina îlhameke wiha di wan kesan de ye ku ew bi mehebbetê xwe ji wan nêzîk dikin.

Ğaye û emanca rabîtayê jî ev e ku însan bi silsîleya wan dostên Heq ên ku bi Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dilên wan feyzyab bibe. Aynî wekî wan însanên raşedar (lerzok) e ku xwe bi tabloya elektrîkê ve digrin, yê di dawîya dawîn de jî bi gorî îstîdada xwe para xwe ji heman herkê werdigre.

Ew edeb û hezkirina ji mûrşidî ku di wê dema mirov li hizûra wî de be jê re şanî dide, divê mirov wê di ğiyaba (ne hazirîya) wî de jî jê re şanî bide, sewîya dîtina rabîtayê di dereceyeke wisan de ku ji bi exlaqê wî bi exlaqbûnê re bibe medar, jê re **fena fî'ş-Şeyx** tê gotin..

Ji meqamê fena fî'ş-Şeyx biwêdetir jî meqamê **fena fî'r-Resûl** heye. Çawa hinek ji eshabê kîram ku di mewqîî'yê stêrên asîmanê Îslamê de ne, berî

409. **Silsîleya şerîf**: Navê wê zincîra mûrşida ye ku ew heta bi Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- dirêj dibe, digihe.
410. 'Eclûnî, Keşfu'l-Xefa, II, 70.

bi Îslamê şerefmend bibin jîyaneke ji fitretê re berevajî dijîyan. Feqet piştî ew hatin ser hîdayetê bi di xwe de dan xuyakirina hestên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bûne çêtirîn însanên dinyayê. Ferza ku di halê silsîleyê de ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo dilê mûrşidê kamil hatiye guhastin jî bi rabîta û sohbetê ji bo salikan întîqal dike.. Bi saya vê şexsîyeta nimûneyî ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi qasî îstîdada wî xwe di mirîdî de dide xuyakirin.

Ew di vê mertebeyê de di her an û gava jîyana xwe de wekî ku li hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- be wisan hereket dike û bi exlaqê wî re bi yek dibe. Rabîta'ya bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re, yanî ji bo xurtkirina pêbendîya xwe jî divê ew bi dana selat û selaman li ser wî û bi îttîbaa'ya sunneta senîyye'ya wî di dilê xwe de xeteke sağlema hezkirin û pevrebûnê pêkbîne..

Çawa malûm e, halê fena fî'r-Resûl, bi awayê ji her awayan sipehîtir di Ebûbekr -radîyellahû anhû- de tehqîq bûye. Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî li hemberî vî halê di wî de gotiye:

"*Ebûbekr ji min e, ez jî ji Ebûbekr im. Ebûbekr hem li dinyayê, hem jî li axretê birayê min e.*"[411]

Ev hedîsa şerîf, ji hev nêzîkbûna qelbî ya li hevber çi xweş îfade dike.

Merheleya di ser vê pevrebûna qelbî re jî meqamê fena fillah e. Bi awayekî layiq nailbûna ji bo sirrên van ayetên di Qur'ana Pîroz de:

وَهُوَ مَعَكُمْ أَيْنَ مَا كُنْتُمْ.

"**Hûn li kuderê dibin bibin, Ew, her bi we re ye**.."[412]

"**Em ji şah-raya însanî hê ji wî nêzîktir in!**"[413] jî bi mezherîyeta meqamê fillah mûmkin e.

Qelbê mûrşidekî kamil ê ku di Cenabê Heq de fena û tine bûye, ew bi mezherîyeta tecellîyên navên îlahî feyzdar bûye. Li ser vî esasî, qelbê mûrşidî adeta wekî mercekê ye ku tîrêjên ronahîyê li ser nuqtekekê himbiz û teksîf

411. Deylemî, Mûsned, I, 437.
412. Hedîd, 57/4.
413. Qaf, 50/15.

kirine. Ew bi bereketa tecellîyan hemû menfîtîyan dişewitîne û wan bi xwelî dike. Mirîd hewl bide bi rabîtayê ji vê bereketê îstîfade bike. Hestên nefsanî û xwedbînî ji dil diçin, di şûna wan de halên şexsê nimûneyî întîqal dikin. Her tiştê dinyewî yê ku qelb dagir dike, derdixe derveyî qelb, ew di cihê ku jê re layiq in de têne wergirtin.

Ev hal-guhêzîya di navbera mirîd û mûrşidî de ji bo mirîdî di rasta hevaynîbûnê de ji pêşveçûnekê re mezherîyet e.

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de dibêje:

"*Mirov ji kê hez bike, pêre ye.*"[414]

Çawa di vê xusûsê de qisseya Eshabê Kehfê[415] ya ku di Qur'ana Pîroz de derbas dibe pirr balkêş e. Segê Eshabê Kehfê Qitmîr, ji ber ku pasevanî li salih û sadiqan kiriye, sedaqetê xwe di wî de jî daye xuyakirin. Ew jî dê wek yek ji sadiqan biçe cennetê.[416] Ha ji we re Qitmîr, heke ew bi pasevanîkirina semîmane ji sadiqan re derkeve vê dereceyê, ğayet eşkere ye ku heke mûmînekî heqîqî jî bi mehebbetê bi dostên Heq û salihan ve were girêdan ka ewê ji bo çi dereceyeke mezin were terfî û bilindkirin.

❀

Li vir ez hez dikim behsa mijareke dîger bikim ku ew bi rabîtayê re elaqedar e, rabîta jî di tesewwufê de pirr giring e.

## Rabîta'ya Mewtê (Tefekkura Mirinê):

Di tesewwufê de ji rabîta danîna bi mirinê re "tefekkura mewtê" tê gotin. Tefekkurkirina mirinê, li ser hal û herketên însanî xwedî bandoreke mezin e. Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje:

اَكْثِرُوا ذِكْرَ هَاذِمِ اللَّذَّاتِ يَعْنِى الْمَوْتَ

"*Wê mirina ku hemû zewqan ji kokê tine dike, zehf di bîra xwe bînin!*"[417]

414. Buxarî, Edeb, 96.
415. Sûretê Kehf, 18/9-26.
416. Ji bo agahîyên bêhtir, li Rûhu'l-Beyana Î. Heqqî Bursewî, V, 226.'an binêrin.
417. Tirmizî, Zuhd, 4.

Bi rastî tefekkura mirinê, arzûyên nefsanî û hezkirina ji dinyayê kêm dike ku her ev însanî reht û bêhizûr dikin. Lewra di dereceyeke zehf zêde de hezkirina ji mal, mertebe, meqam û sipehîtîyên nefsanî yên berwext ên dinyayî ku tên û diçin û dilê xwe girêdana bi wan ve serê nexweşîyên manewî yên wekî ğefletê ne. Ji bo parastina qelbê xwe ji qeyd, bend û peywendên wekî van, hizirîna qebrê û tefekkurkirina ehwalên qebrê ku wê di paşwextê de werin serê me; me diajone ser tobeyeke semîmî, me di îbadetan de diajone ser xuşûê û me ji îhtîrasên dinyewî û ji hewa û hewesên pûç diparêzin.. Zikr û rabîta'ya me ya ku em li ser wan dewam dikin jî ji bo xilasî û seadeta axretê dibin wesîle.

Mezinên Îslamê, ji bo qelbên ğafil şîyar bikin û dilên mirî sağ bikin di vê cîhetê de çendîn pend û nesîhet kirine û gel şîyar kirine.

Çawa Hezretê 'Elî -radîyellahû anhû- di qewîtîya xwe ya li kurê xwe Hesen -radîyellahû anhûma- de jê re wiha gotiye:

"Kurê min! Bi ciddîyet mirinê bîne bîra xwe û bi bîranîna mirinê qelbê xwe terbîye bike. Di encamê de jibîr neke ku wê her tişt tine bibe û zanibe di vê tinebûnê de qerar bigre. Dem bi dem tehlûkeyên dinyayê di bîra qelbê xwe bîne!"

Bi rastî ji ber ku dem wekî xeteke ripûrast naherike naçe, divê mirov ji vê ğafil nebe ku çêdibe wekî rojên baş rojên dijwar û bi tengasî jî mûmkin, mûhtemel mûqedder bibin.

**Îmam Ğezalî** -rahmetullahî eleyh- jî wiha şîretan dike, dibêje:

"Hey kur! Heta tu bixwazî, bijî, ji xwe çawa be jî rojekê her tu dimrî! Tu çi bixwazî jê hez bike, ji xwe çawa be jî rojekê tu her jê vediqetî! Tu çi bixwazî wê bike, ji xwe çawa be jî rojekê her tu yê hesabê wê bidî!..

Hey kur! Divê meqsûda te hewldana ji bo vê be, tu rûhê xwe kamil bikî, tu li ser nefsa xwe bibî hakim û tu bedena xwe ji bo mirinê amade bikî. Lewra rawesteka dawîna te dê qebr be. Ewên di qebran de çavnêrî dikin dibêjin; «tu yê kengê werî?» Zinhar nebêje; ezê bêzad herim wir!"

**Ûmer bin Ebdûlezîz** di xutbeya dawîna xwe de nesîhet kiribûn, hinek ji nesîhetên wî wiha ne:

"Gelî mirovan!

Axreta ku dehşetê dipijiqîne yeman e. Pêğemberên ku ji bo sirrê Celal bûne mezher û melaîketên mûqerrebîn jî ji dehşeta wê rojê dilerizin. Ma li hemberî celala îlahî di kê de taqet û tehemmul dimîne?

Digel vê jî bi sebeb berferehîya bêsînora rahma Xuda jî hêvîya xwe winda nekin!

Dîsa mûheqqeq zanibin ku sibê li mehşerê di selametê de bûn, ji bo wan mirovan e ku îro ji Xuda ditirsin, xwe ji kufr û îsyanê diparêzin û ya baqî li ser ya fanî tercîh dikin. Ewê ku bizaveke berevajî van bike, tê xapîn, sermayê temenê xwe li karên ne layiq sarf dike û paşê jî destê wî vala dimînin.

Îro hûn hatine şûna yên ku bûrîne, çûne. Helbet wê dîger werin şûna we jî!..

Hûn dibînin ku yên tên diçin; yên ku diçin jî bi şûn de venagerin. Ev çûn, ya ne bi keyfa xwe, ev herka di hebûnê de, ber bi Cenabê Ellah ve ye.

Hema hema hûn her roj mirovên ku ji we vediqetin û diçin axretê bi rêwengî dikin, hûn wan dibin îstîrahetgeha ebedîya wan jî lê ma hûn hîç îbret ji van nagirin? Hûn wan di bin axa reş de bê nivîn, bê balgeh, tek û bêkes dihêlin û diçin. Halê wan fanîyên ku tehlîya mirinê diçêjin çi qeder dil bi wan dişewitîne, rewşeke îbretdar e. Ew çûne alemekê ku wê nas nakin, ji hezkirîyên xwe cuda bûne, ji ğefleta vê jîyana berwext şîyar bûne. Wan heqîqet dîtiye lêbelê kar ji dest wan çûye, çûk ji ser hêlîna xwe firîye, sedemên telafî û tedarikê ji dest wan çûne. Di destên wan de ji bilî amelên xêrê yên wan tiştekî din nemaye. Ew di wê roja cezayê de gunehên wan di çavên wan de mezin bûne, bi halên xwe yên ji ğemgînîyê tije li hêvîya encama xwe ne. Ew bi awayekî perîşan bi dehşeta mûqeddera mehşerê dilerizin."

Mirin, sebebê şîyarbûna di alemê din de û waqifbûna ji rastîyê ye. Lêbelê şîyarbûna li wê alemê ji ber ku ti feydeyekê nade wan, îcab dike însan berî mirinê perdeyên ğefletê bidirrîne û şîyar bibe.

Tefekkura mirinê, wasîte û navgîneke mûhîm e ku mirîdî ji îhtîrasên wî, ji pişt pê girêdana wî ya bi dinyayê ve û ji her cure îltîfatkirina wî ya ji bo temayulên nefsanî diparêze. Di tesewwufê de ji ber ku ğaye û emanc, ğalibbûna li ser nefsê ye, tefekkura mirinê hema di her terîqetê de usûleke jêneger e ku ji bo vê meqsûdê serî lê tê xistin.

❀

## b. Sohbet

Dîwanên sohbet û zikrê, li dinyayê bexçeyên cennetê ne, ku rahm û sekîneta îlahî tavî bi tavî li ser wan dibarin.

Yek ji wasîteyên giringtirîn ên ku mûrşidên kamil bi meqsûda bandorkirina li ser rûh û qelbê salikî, bikartînin "peyv" e, yanî sohbet e. Di peyva kesê ku nefsa xwe tezkîye kiribe û qelbê xwe tesfîye kiribe de, hestên halê ku jîyabe li ser wan barkirî ne. Ew peyvên ku bi van hestan û bi îxlasê têne gotin, ji guhên berpeyvî ber bi qelbê wî ve ji bo xwe rê dibînin û bandorên bixêr hasil dikin.

Bingehîntirîn faktora ku sohbetê bibandor dike jî "**îxlas**" e. Hinek maneyên ku tam bi îxlas li peyvan têne barkirin û ev faîlîyeta mûrşidê kamil ê ku hewl dide hestan ji bo berpeyvî bide guhastinê, ji îttîbabûna ji bo sunneta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- birrîtî û îbaret e. Keyfîyeta "îxlas"ê ku vê mûessirîyetê tîne hisûlê, ji vê îbaret e ku însan bi zanîna xwe amel bike û ji dil û can bixwaze tişta ku ji berpeyvî re telqîn dike, ew têde bicih were.

Sebebekî dîger ê mûessirîyeta peyvê jî "**wecîz**" bûn e. Bi wayekî wecîz îfadekirina peyvê jî bi hakimîyeta mûtleqa li ser zimanî û bi bijardina peyvên guncawtirîn ji bo meqsûdê mûmkin e. Zirweya vê qudretê jî, Qur'ana Pîroz e.

Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- giha serdema Mekkê keça Îmreu'l-Qeys şairê navdarê Erebî hê sağ bûye. Sûretê Zilzal jê re xwendin. Ev jina ku baş dizanîbû ka belağet, fesahet û ʻîcaz çi ye, ji heyretê mat ma û got:

"-Peyveke wiha, peyva însanekî nabe. Şîyana hîç ti beşerekî nîn e ku peyveke di vê astê de bibêje. Dema kelamekî wiha li sererdê hebe, êdî ne mûnasib e şiêra bavê min bi Kʻabê ve daleqandî bimîne. Ji kerema xwe herin wê jê peya bikin û vê bi wir ve daleqînin!."

Bi vê sedemê ye ku di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

اِنَّ مِنَ الْبَيَانِ سِحْرًا

"*Bêşiwar hinek ji peyvan (wekî) sêhrê (xwedî hêza tesîrê) ne.*"[418] Yanî peyv, di qelb de adeta tesîreke sêhrbazane tîne hisûlê.

418. Buxarî, Nîkah, 47.

Bi vê nêrînê giringîya îrşada bi peyvê, yanî bi sohbetê pirr mezin e. Bi taybetî ji bo mirov bi awayekî layiq zanibe ka bereketa di sohbeta Hezretê Pêğember de çi ye, kafî ye ku hema mirov sebeb û hikmetên ku di tarîxa însanîyetê de ji bo wê serdema ku ew sohbet têde hatiye kirin “esrê seadetê” hatiye gotin, bifikre.. Ew sohbetên ku sunneteke mûekkeda pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ne, hema bibêje di temamê terîqetan de û nemaze di Neqşîtîyê de ji bo guhezîna feyzê ji qelb ji bo qelb ji mewqîîyeke xusûsî re haiz û pêgiha ye.

Di mijara îfadekirina qudreta tesîra mûsbet yan jî menfî ya peyvê de ev malik ên Yûnus Emre çi qeder wecîz in:

*Peyv heye ku cengê dibirre*
*Peyv heye ku serî dibirre*
*Peyv heye ku xwarina bijehr*
*Bi hinguvîn û tewaşî werdigerîne*

Eshabê kîram bi rabûrîya xwe, alema dilî ya wan dişibiha axa şoraxê, bi tavîyên tund ên rahm û bereketa keş û hewaya manewî ya di dîwanên sohbeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de hatine stran. Bi saya vê, ew fezîletên bêhempa û tuxmên maneyê ku di wextê xwe de ser wan bi axê hatibûne nixumandin, ji bo xwe neşw û nema dîtin. Bi dan û standina mehebbet û rûhanîyetê ku xwe ji sadrê (singê) ji bo sadrê (singê) didane xuyakirin, şexsîyetên stêrî înkîşaf kirin. Ew însanê serdema cahîlîyetê yê bêrahm, bêwijdan, ew qeder dilhişkê ku karibe hê bi sağî keçbiçûkên xwe di bin axê de veşêre, ew qeder heqnenas û hiqûqnenas helîya çû, winda bû. Di nav heman sîluetî de lêbelê vê carê huwîyeta însanê çavbihêstir û dilşil, dîgerğem, tenik, reqîq, hessas teşekkul kir.

Di vê meyanê de caliba diqqetê ye ku kelîmeyên “sehabe” û “sohbet” ji heman kokê tên. Eshabê kîram, di nav hissîyata mehebbet, hurmet û edeba ku di dilê xwe de ji bo pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hestpê dikirin, ew ji bo îstîfadeya ku ji sohbet û terbîya manewî hatiye qesdkirin bûne nimûneyeke nêrebertirîn û mûkemmeltirîn. Lêbelê di mijara adeta eşkerekirina şertê vê îstîfadeya ku pê gihane de halê hizûr û edeba ku di sohbeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de ketinê bi vî awayî îfade dikirin:

"-Me zen dikir her wekî ku li ser serê me çûkek hebû, heke em xwe tevbidin ewê bifire."[419]

Ew mirov çûbine kuderê, şexsîyeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û exlaqê mezinê wî jî bi xwe re birine wir. Wan nimûneyên bêhempa yên fezîletê raxistine ber çavan ku heta bi qiyametê dê menqîbeyên wan her berdewam bikin. Rebbê Mezinê me di bara wan de di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"(Di mijara ketina dînê Îslamê de) **Mûhacir û Ensarîyên pêşîn ên ku çûne pêş, û ewên ku di sipehîtîyê de li pey wan diçin hene ya, ha Xuda ji wan razî bûye û ew jî ji Xuda razî bûne. Xuda ji wan re cennet amade kirine ku ewê heta hetayê di wan de her bimînin û ji zemîna wan jî çem dikişin, diherikin. Ha ev, xilasîya mezin e**."[420]

Hemû sohbetên ku di nav wecda îbadetê de derbas dibin, eks û xuyabûnek ji sohbetên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ne. Lewra navenda îstîfadeya manewî, ew e. Sohbetên bi heyecana rûhî tije, tim ew şewq û tavek in ku bi teselsul ji wê navendê hatine guhastin. Ji lewma bendeyek, heke bi navgîna dostekî Heq para xwe ji nûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wergire, ev nûr, ji ber ku ji heman navendê ye, ew bûye her wekî ku bizzat ew ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wergirtibe. Aynî wekî bi mûmekî mûmên din têne pêxistin yan jî bi agir pêxistina bi wan bi xwe ye.. Ew pêtên ku xwe dişewitînin û hawîrdorên xwe rohnî dikin, heman pêt in. Heke bende, bi wasîteya dawîtirîn qendîlê rohnî bibe, ew ronahî, ji ber ku ji ronahîya pêşî şewqa xwe wergirtiye, ew daîm serkehnîya pêşî dide xuyakirin.

Dîwanên sohbet û zikrê, li dinyayê bexçeyên cennetê ne, ku rahm û sekîneta îlahî tavî bi tavî li ser wan dibarin. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de dibêje:

"*Heke civatek were cem hev ji bo Xuda zikr bike, melaîket hawîrdorên wan digrin. Rahma Xuda wan dide ber xwe, sekînet li ser wan peya dibe û Xudê Teala, di navbera yên li cem xwe de behsa wan dike.*"[421]

419. Binêrin. Ebûdawud, Sunnet, 23-24.
420. Tewbe, 9/100.
421. Mûslim, Zikr, 39.

Divê mirov dîwanên salih û sadiqan yên wiha ji bo xwe ğenîmet zanibe. Lewra ev dîwan maneya bihiştekê wisa ne ku di nav wan de çav û dilên wisan veşartî ne, ku bi îşqa îlahî dikin xumexum.

Mêrxasên dil, salih û arif jî mehebbet, îşq û wecdên di qelbên xwe de bi sohbetên xwe diguhêzin. Di encama înîkas û însîbağê (boyağbûna manewî) de dil li gorî qabilîyet û amadehîya xwe bi nûra feyz û heqîqetê tije dibin. Aynî wekî bahora sibehê ku li ser bexçeyekî bi gul, qerenfîl û çîçekên nadîde hatî xemilandin de tê, cihê ku bi wan ve diçe bi xwe re rayîha û bêhnên letîf û xweş dibe wan deveran û ferahî û dilşadîya biharê dide dilan.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

وَذَكِّرْ فَإِنَّ الذِّكْرَى تَنفَعُ الْمُؤْمِنِينَ.

“**Tu şîretan li wan bike. Lewra şîret, feydê didin mûmînan**.”[422]

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi maneya kamil ev ayeta pîroz dijîya, gotiye:

“*Dîn ji nesîhetê îbaret e*.”[423]

Du maneyên nesîhetê hene. Yek ji wan bang-kirina ji bo xêrê ye, maneya din jî semîmîyet e.

Ebdûllah bin Rewaha -radîyellahû anhû- li yekî ji eshabê kîram rast dihat, jê re digot:

“Were (birayê min!) Em ji bo Xuda maweyekê rûnin, em îmana xwe ya bi Rebbê xwe nû bikin (em wî zikr bikin).”

Sehabîyekî ku fehm nekiribû ka ev çi ye, çûbû rewş ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re vegotibû. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bersiva wî dabû, jê re wiha gotibû:

“*Rahma Xuda li Ebdûllah bin Rewaha be. Ew zehf ji dîwanên zikrê hez dike ku melaîketan medhê wan dane*.”[424]

Ev hedîsa şerîf jî di bara giringîya sohbetê de pirr mûhîm e:

422. Zarîyat, 51/55.
423. Buxarî, Îman, 42.
424. Binêrin. Ahmed bin Henbel, Mûsned, III, 265.

Jinek hate dev pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û jê re got:

“-Ya Resûlellah! Mêr her ji peyvên Te îstîfade dikin. Rojekê ji bo me jî veqetîne da ku em wê rojê kom bibin û ji tiştên ku Xuda li te hîn kirine tu wan li me jî hîn bikî!”

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

“*-Baş e, vê rojê li wê derê kom bibin!*”

Vêca jin li wir kom bûn. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî çû ji tiştên ku Xuda lê hîn kiribûn, li wan jî hîn kir.[425]

Sehabîyên jin ku bi bereketa van sohbetan ji bo ummetê tevî bûne dêyên nimûneyî, zarokên xwe yên ku di dîtina pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de dereng diman, yan jî maweyeke dirêj neçûbûne hevdîtina wî, şîyar dikirin. Çawa Huzeyfe -radîyellahû anhû- ji ber ku çend rojan Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nedîtibû, dêya wî li erza wî dabû. Ew vê hîkayeta xwe wiha vedibêje:

Dêya min ji min pirs kir:

“-Te cara dawîtirîn çi demê bi Mezinê me Pêğember re hevdîtin kir?”

Min jî jê re got:

“-Min ji çend rojan ve hevdîtin bi wî re nekiriye.”

Ew zehf ji min hêrs bû û bi awayekî tund li erza min da. Min jî jê re got:

“-Bêhna xwe fereh bike, hêrs nebe! Ez derhal diçim dev Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, ez pê re nimêja meğribê eda dikim, piştre ez ji wî dixwazim ku ew hem ji bo min hem jî ji bo te îstiğfaran bike.”[426]

Yek ji mezinan Hezretê **Mûhemmed Ziyauddîn** -quddîse sirruh- dem bi dem zarokên biçûk li ber serê xwe kom dikirin û bi wan re sohbet dikir. Dîsa di piştî sohbeteke wiha de jina wî jê pirs kir, jê re got:

“-Ew hê biçûk in, çi ji sohbetê fehm dikin?”

425. Buxarî, Îlm, 36.
426. Tirmizî, Menaqib, 30; Ahmed bin Henbel, Mûsned, V, 391-2.

Hezret wiha bersiva wê da, jê re got:

“-Ew jî hindik-gellek îstîfade dikin. Lêbelê meqsûda esilîya min, ne fehmkirina wan ya tiştekî ye. Dîwanên sohbetê rahma Xuda bi ser xwe de dikişînin. Ez li pey wê rahmê me. Ev zarok jî wesîleyek in..”

Welîyê Gewre (Mezin) **Şahê Naqşîbend** -quddîse sirruh- dibêje:

“Rêya terbîya me li ser sohbetê hatiye avakirin. Xêr, ji bo Xuda di pevre-bûna digel însanên salihan de ne. Bi dewamkirina li ser sohbeta bi wan re gihiştina bi îmana heqîqî dibe nesîb.”

Yek ji aliman **Cafer bin Suleyman** -rahmetûllahî eleyh- jî di bara tişta ku sohbeta digel salihan jê re daye qezenckirin de wiha vedibêje:

“Dema ez di qelbê xwe de hest bi hişkbûnîyekê dikim, ez radibim derhal diçim cem Mûhemmed bin Wasî, di dîwana wî de pişkdar dibim, li rûyê wî dinêrim. Bi vî awayî hişkbûnîya di dilê min de jê diçe, tenbelî ji ser min radibe û ez hefteyekê bi vê keyfê îbadet dikim.”

**Ûmer bin Ebdûlezîz** -rahmetûllahî eleyh- jî gotiye:

“Bi Ûbeydûllah bin Ebdûllah re di dîwanekê de bûn ku ew yek ji fiqh-zanên Medînê ye, ji bo min ji dinyayê hezkirîtir û bixêrtir e. Bi yên wekî wî re rûniştin û rabûn, aqil binûr dibe, qelb bi hizûrê digihe û edeb tê bidestxistin.”

Yekî ji şagirtên welîyê mezin Ebû’l-Hesen Şazelî -quddîse sirruh- sohbetên wî terk kiribûn. Hezret rojekê li vî şagirtê xwe rast hat, jê pirs kir, jê re got:

“-Tu çima ji me veqetiyayî, te çima terka sohbetên me kir?”

Şagirtê wî bersiva wî da, jê re got:

“-Heta vêga tiştên ku min ji we girtine û tiştên ku ez ji we hîn bûme, ji min re bes in, êdî îhtiyaca min bi we nemaye.”

Hezretê Şazelî ji bo vê rewşê ğemgîn bû, ew wiha şîyar kir:

“Binêre, ewladê min! Heke beskirina kesekî bi feyza ku ji kesekî wergirtî rast bûya, lazim dibû Hezretê Ebûbekrê Siddîq -radîyellahû anhû- bi feyza ku ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wergirtî bes bikira.

Haleveku heta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wefat kir jî, ew jê cuda nebû..."

Helbet ne sade Ebûbekr -radîyellahû anhû-, hemû eshabê kîram bi îştiyaqeke cipûcuda dibezîne sohbeta Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û feyz jê digirtin. Ji xwe pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî bi her wesîleyê eshabên xwe ji bo vê teşwîq dikirin. Lewra yek ji giringtirîn usûlên wî yên terbîyê jî sohbet bû.

Bi qeder îştiyaqdarbûna ji bo bidestxistina sipehîtîyên ku însan bi sohbetê ji bo wan nail bibe, mijareke giringa dîger jî heye ku ew jî diqqetkirina li zeman û zemîna sohbetê ye. Di vê mijarê de Ebdûllah îbnû Mesûd -radîyellahû anhû- wiha gotiye:

"Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo şîretên xwe zemanê guncawtirîn raçav dikir da ku me bêzar neke."[427]

Yek ji eshabê kîram Ebû Waqid el-Leysî -radîyellahû anhû- vedibêje:

Rojekê em digel komeka mirovan li mizgeftê li hizûra Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bûn. Di wê esnayê de sê zilam li ber derî hatin dîtinê. Yek ji wan nehate hundur û ji wir çû. Herduyên dîger jî hatin hundur û ew heta bi cem Mezinê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî hatin. Yekî ji wan di nav helqeyê de ji bo xwe cihekî vala dît û ew li wir rûnişt. Yê din jî ji ber ku cihê vala nemabû, hem jî hizr pê kir ku ew ti kesî reht neke, derhal li pey wî yê ku rabûyî, rûnişt.

Piştî demekê Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di devereke sohbeta xwe de wiha got:

"*Ma rewşa hersê kesan ji we re vebêjim? Herçî yê yekem e ku di di nav heleqeyê de rûnişt, wî penaha xwe bi Xudê Teala kir. Xuda jî ew xist ber hîmaya xwe.*

*Herçî yê duyem e, wî kesî ji Xuda heya kir, wî xwe bi edebê girt. Xudê Teala jî ji wî bendeyê xwe heya kir; ew ji ezabê xwe biewle kir.*

*Herçî ewê ku nehate hundur jî; wî jî berê xwe ji vê dîwanê vegerand. Xuda jî berê xwe ji wî vegerand.*"[428]

427. Buxarî, Îlm, 11.
428. Buxarî, Îlm, 8.

Hemû mezinên Îslamê ku hikmeta di vê hedîsa şerîf de fehm kirine, çendan ew di zirweya îlmê de bûbin jî daîm di dîwanên sohbeta dostên Heq de dilên xwe strane û hîç ti zemanekî xwe ji bûna di wan dîwanan de îmtîna nekirine. Çawa yek ji îmamên mezinên mezheban Ahmed bin Henbel -rahmetûllahî eleyh-, dem bi dem diçû cem welîyê mezin Bişrê Hafî -quddîse sirruh- û pê re sohbet dikir. Bi maneya tam bi wî ve hatibû girêdan.

Carekê şagirtên wî jê re gotin:

"Ya îmam! Tu di îlmê Qur'an û Sunnetê de mûctehid î. Digel vê jî ma ji te re layiq e ku tu herî û werî cem însanekî wiha jirêzê?"

Îmamê Gewre ev bersiv da wan, ji wan re got:

"-Erê, ew mijarên ku we jimartin ez ji wî baştir dizanim. Lêbelê ew ji min bêhtir Cenabê Heq dizane û nas dike."

### c. Xizmet

**Xizmeteka meqbûl; bi dilekî ji îxlas, merhemet û dîgerğemîyê tije bi awayê berê xwe dana mexlûqatan gerîna li rizaya Xuda ye.**

**Ehlê hikmetê, divê bi hessasîyeteke wekî ku di zevîya mayînan de birêve herin, wisan di mûamelatên xwe de li nezaketê diqqet bikin. Lewra berpeyvê wan, ew dil in ku nezargeha îlahî ne.**

Di terbîya tesewwufî de giringîya xizmetê pirr mezin e. Bi bandortirîn rêya bicihkirina tewazû û mehwîyetê di dilan de û bicihkirina hesta şefqetkirina li mexlûqatan di xizmetê re derbas dibe. Bi vê nêrînê, hemû mûrşidên kamil, di terbîya salikên xwe de xizmet wasîteyeka mûhîm teleqqî kirine, wergirtine.

Heke em li esasên exlaqê Îslamê bigerin, di bi îşq û îxlas berê xwe dana Rebbê xwe de tekane nîşana vê berê-xwe-danê jî hîç guman nîn e ku emê wê di "**xizmet**"ê de bibînin. Lewra xizmeta di çarçoveya destûra "ewê ku xizmet bike, bi himmetê nail dibe" de pêpelingeke mûstesna û ulwî ye ku dilan bi zirweyên îlahî bigihîne.

Ew pêpelingeke wisa giring e ku temamê wan zatên ku ji bo wusleta îlahî û mûkafata bêdawî bimezher bûne, pêğember û ewlîya, ew tev li ser vê

pêpelingê bilind û mezin bûne. Yanî ew di dirêjahîya temenê xwe de ji bo vê hedîsa şerîfa Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-:

"*Mezinê civatekê, ew e ku ji wan re xizmetkar e.*"[429] bûne nimûneyên nêreber û mûşexxes.

Bi vê nêrînê, ji bo bendeyan rêya zirweyan û qezenca ebedîyyetê, di wan xizmetan re derbas dibe ku bi dilekî semîmî hatine pêşkêş kirin. Xizmet wisa giring e ku li gorî cihên xwe xizmeteke biçûka ji rizaya îlahî re mûwafiq û ahengdar, dibe ku ji çendîn îbadetên nafîle çêtir be.

Çawa di sefereke ku germî pirr dijwar bû de Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- barê xwe li devereke guncaw danîbû. Hinek ji sehabîyan birojî bûn, hinek ji sehabîyan jî ne birojî bûn. Ewên ku birojî bûn ji ber westina xwe ketin xewê. Ewên ku ne birpjî bûn jî ji bo rojîgiran av kişandin ji bo ew pê desmêj bigrin û kon ji wan re vedan ji bo ew xwe bidin ber siha wan. Lêbelê dema bû wextê îftarê, pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- got:

"*-Îro, ewên ku rojî negirtibûn bi ecreke hê zehftir nail bûn.*"[430]

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo ummeta xwe çendîn qendîlên xizmetê yên wiha pêşkêş û dirêj kirine, di dema avakirina Mizgefta Qûba'yê û Mescîdun-Nebewî'yê de digel hemû israra sehabîyan û digel hemû ğeyret û hewldanên wan ji bo asteng-kirina wî jî dîsa wî ji bo herdu mizgeftan kevir li ser milên mûbarek ên xwe kişandine û anîne.. Ev nefsbiçûkî û tewazûya bilind û giyanê xizmetê yê Nûra Hebûnê, ji bo temamê ummetê mîsal û nimûneyeke bêhempa ye. Di esl û esasê xwe de ji vî serî heta bi wî serî'yê din temamê jîyana pîroza wî bi xizmet-kirina ji bo Heqq, însanîyet û hemû aferînde û mexlûqatan derbas bûye.

Ji lewma xizmet, di jîyana wan bextiyarên ku ew Hebûna Mûbarek ji bo xwe bi nimûne kirine de jî dibe yek ji wesifên bariztirînên wan. Wate, her dilê ku ji bo heq evîndar û ji bo Pêğember mecnûn û dîn be, ehlê xizmetê ye. Ew mirovên ku ehlê xizmetê bin jî dişibihin heyv û taveroja li asîmanî ku çi qeder ew hawîrdorên xwe rohnî dikin, her wisan berraqî û berqînokîya wan jî her zêde dibe. Ne qermiçînîya payîzê, ne jî çilmisînîya zivistanê dikare zirarekê bigihîne wan. Bi îfadeyeke din, bi vegotineke dîger, ew her wekî çem

429. Deylemî, Mûsned, III, 324.
430. Mûslim, Sîyam, 100-101.

û rûbarekî ne ku her dikişin û diherikin, bi dirêjahîya rêyên dûv-dirêj xizmetê ji candaran, heywanan, daran, çîçek û gulan, yasemîn û sumbulan û şehlûl û bilbilan re pêşkêş dikin, bi vî awayî menzil û qunağa ku ewê bigihinê, sade deryaya bêdawînî û wusleta canan e..

Ew kesên ku ji vê heqîqetê re aşîna û çavnas bin, çendan ew li ser serê xelkê bûbine padîşah jî dîsa wan bi berdewamî her xwe wek çakar û xizmetkar jimartine. Padîşahê dewleta nehîtîya Osmanî Yavûz Sultan Selîm Xan, dema bajar û welatên mûbarek ji bo dewleta wî hatine biemanet-kirin û di xutbê de di bara wî de hate gotin:

"Hakîmu'l-Heremeyni'ş-Şerîfeyn (wate hukmdarê Mekkeh û Medînê)" hêstir ji çavên wî barîn, wî îtîraz li îmamî kir û jê xwest ku ew wê hevokê wiha sererast bike, bibêje: "Bileks Xadîmu'l-Heremeyni'ş-Şerîfeyn (wate xizmetkarê Mekkeh û Medînê)", ev helwesta wî tezahura têgihiştineka bilinda xizmetê û şanîdêra îdraka ğayeya eslî ya di evdînîyê de ye.

Çawa Ûbeydullah Ehrar -quddîse sirruh- jî mertebeya ku pê gihabû li bereketa xizmetê vedigerand û ji mijara tehdîsa nîmetê (yanî vegotina wê nîmeta ku Xuda daye mirovî ji xelkê re) wiha dibêje:

"*Me mesafeyên di vê rê de, sade ne bi xwendina kitêbên tesawwufê, lêbelê bi qeder derfet û îmkanên xwe bi tetbîqkirina kitêbên ku me xwendine û bi xizmet-kirina ji xelkê re, ew mesafe qut kirine. Herkesî di rêyekê re dibin, em jî di rêya xizmetê re birin.*"

Ev jî dide zanîn ku zanîn tenê têrê nake, divê mirov wê zanîna xwe bi xizmetê biguhêze, wergerîne.

Lêbelê meqbûl-bûna xizmeta ku hatiye kirin li cem Heq, bi îcrakirina wan xizmetan bi hinek wesfan ve bend e ku divê xizmet-kirin ji wan wesfan re haiz be. Li gorî vê ji bo xizmeta ku mirov dike bibe xizmeteke meqbûl; (pêşî) divê mirov bi dilekî ji îxlas, merhemet û dîgerğemîyê tije, bi awayê berê xwe dana mexlûqan li rizamendîya Xuda bigere. Yanî xizmet, divê mirov bi kirina xizmetê ji bo xwe ti menfîateke nefsî li ber çavan negre, lê wê bi awayekî semîmî bike û bi kirina xizmetê sade qezenca axretê ji bo xwe bi emanc bike. Heke wiha xizmet were kirin, wekî ku behsa wê di hedîsa şerîf de derbas bûye hingê "nîv xurme" jî ji bo xilasîya ebedî dibe wesîle.

Hezretê Ûbeydullah Ehrar vedibêje:

Ez rojekê çûbûm bazarê. Însanekî birçî hate dev min û ji min re got:

“-Ez birsî me, ji bo Xuda zikê min têr bike!..”

Di wê an û demê de hiç ti îmkan û derfeteke min nebû. Sade şaşikeka kevina min hebû. Ez çûme dikana xwarinpêjekî. Min ji xwarinpêj re got:

“-Raje vê şaşika min, bila ji te re be. Ew kevin e, lêbelê temîz e, paqij e. Tu yê firağên xwe pê ziwa bikî. Lêbelê tu jî di hemberê wê de zikê vî mirovê birçî têr bike.”

Xwarinpêjî xwarin da wî feqîrê reben; wî xwest şaşika min dîsa li min vegerîne. Lêbelê digel hemû israrên wî jî min ew qebûl nekir. Digel ku ez bi xwe jî birçî bûm, lê min negot; ez jî birçî me û ez sekinîm heta wî têr xwar.

Hezretê Ûbeydullah Ehrar, piştre bi kerem û lutfa Cenabê Heq bû xwediyê serweteka mezin. Ew, ew qeder dewlemend bûbû ku bi hezaran karker û pale di bağ û cotgehên wî de kar dikirin. Lêbelê ew zatê mûbarek, digel zengînî û serwetmendîya xwe jî dîsa wî xwe ji xizmetê li paş nehişt. Ew, halê xwe yê di zemanê dewlemendî û zengînîya xwe de wiha vedibêje:

Min xizmeta ji bo çar nexweşên di Medreseya Mewlana Qutbuddîn de li Semerqendê hilgirtbû ser xwe. Ji ber ku nexweşîya wan zêde kiribû, wan nivînên xwe dilewitandin. Min ew bi destên xwe dişûştin û cilên wan li wan dikirin. Ji ber ku min bi berdewamî ji wan re xizmet dikir, êdî nexweşîya wan ji wan sîrayet kiribû û hatibû min jî û ez jî ketibûm nav nivînan. Lêbelê min bi vî halê xwe jî dîsa min bi destê xwe av bi satilan ji wan re dikişand û min li ser paqijkirina bin nexweşan û şûştina cilên wan dewam kir.

❁

Tevger û bizavên îdeal di bara fezîleta xizmet û înfaqê ya di rêya Heq de di jîyana mezinan de, ji bo me nimûneyeke sipehî ye. Naxwe mislimanek çi qeder zengîn dibe bila bibe, ewê bes bi qeder zêdekirina dîrayeta manewî ya xwe û bi sewîyekirina jîyana qelbî ya xwe bikare heq û bedelê derfetên maddî yên xwe bide. Paşê heta ew di manewîyatê de terreqî bike, bipêşkeve, hem jî ji bo karibe ji nefsbiçûkî û tewazûyeke kamil re bibe xwedî; pîvanên zuhd û teqwayê jî rîayet bike, li ber çavan bigre, ewê bi wê nuqteya îdeala di çîroka jîyana Hezretê Ûbeydûllah Ehrar de, bigihe.

Yek ji wan mertebeyên ku di xizmetê de gihiştina wê pirr zehmet e jî ev qisse ye ku di dostê Heq Marûfê Kerxî de tê mûşahedekirin:

Nexweşekî yextiyar û êşdar bûbû mêhvanê Hezretê Marûfê Kerxî. Mêrik bêçare bû; pora wî weşiyabû, rengê rûyê wî zer bûbû; canê wî, wekî çengalekî dikir ji bedena wî derkeve. Hezretê Marûfê Kerxî, doşekek raêxist û îstîraheta nexweşî li serê temîn kir.

Nexweş bi şewta êş û elema xwe dinalîya, dikire feryad û fîğan. Heta sibehê wî sanîyekê jî çavên xwe nedane ser hev û bi nalîn û enînên xwe, bi hewar-hewar û feryadên xwe jî nehiştibû ku ti kes ji ferdên xelkê malê raze û çavên wan herin ser hev. Di ser de jî her ku diçû xuyê wî hê xirabtir dibû, wî destpê kir çêr ji xelkê malê re kirin û ew jî reht û nexweşhal kirin. Di paşîyê de xelkê malê hew karîn vî tebîatê hişk û tevgerên xirab ên wî tehemmul bikin. Vêca ew yeko yeko û dudu dudu ji ber wî bazdan, çûne hinek cihên din. Bi vî awayî, li malê ji nexweşî û Marûrê Kerxî pê ve kes nema.

Marûfê Kerxî bi şev jî xew bi çavên wî nediket; wî dida xwe ji bo karibe îhtîyacên vî nexweşê xuy-xirab bibîne û jê re xizmetê pêşkêş bike. Lêbelê rojekê xuyxirabîya wî giha qunağa dawîn û çavên Marûfê Kerxî bêhemdê xwe bi xew ve çûn. Nexweşê ğafil dema dît ku ew bi xew ve çûye, di şûna ku ji bo vî zatê salih ê ku bi şefqet û merhemet hemêza xwe jê re vekiriye teşekkur bike de gileh û gazindan jê dike û ji xwe bi xwe re wiha dibêje:

"-Ev çawa derwêş e, wiha!.. Ji xwe mirovên wekî vî di zahirê xwe de ji wan re nav û deng û sena hene; lêbelê ew di rastîyê de mirovên riyakar in, zerqekar in. Ew şîreta teqwadarîyê li ğeyrê xwe dikin, lêbelê bi xwe bi xebera şîretên xwe nakin. Ji lewma ev zilamê ha li ser halê min nahizire û pixe-pixê ji xewê tîne. Ma ew kesê ku zikê xwe têr kiribe û ketibe temara xewê wê çi ji halê nexweşê bêçare yê ku heta sibehê xew bi çavên wî neketiye, fehm bike, zanibe!.."

Marûfê Kerxî li hemberî van peyvên tehlên ku bihîstin jî sebir kir, xwe ragirt û kerem şanî da. Xwe li nebihîstinê danî. Lêbelê hevsera wî nekarî xwe hê bêhtir ragire û bang li Marûfê Kerxî kir, jê re got;

"-Ma te seh kir ku vî xuyxirabî çi gotin. Êdî em nikarin wî li vê malê bihewînin. Bila em destûr nedin ku ew hê bêhtir bargiranîyê ji me re çêke û hê bêhtir êş û cefayê bide we. Jê re bibêje; bila ew ji vir here, bila li cihekî din li çareya serê xwe binêre. Qencî li wî kesî tê kirin ku qedr û qîmetê qencîyê

zanibe. Qencîkirina li nankoran, xirabî ye. Ew qencîya li nankoran, nankoran hê hartir dike. Balgeh di bin serê kesê nehêja de nayê danîn. Serê kesên wiha zalim, divê li ser keviran bin."

Marûfê Kerxî bi bêhnferehî li van peyvên hevsera xwe guhdarî kir û bi awayekî bevkenî û mûtebessimane jê re wiha got:

"-Xanimê! Peyvên ku wî gotine çima te diêşinin? Heke wî kiribe qîrewîr, wî bi ser min de kiriye qîrewîr; heke wî bêterbîyetî kiribe, wî bêterbîyetî ji min re kiriye. Ew peyvên wî ku naxweş dixuyên, ji min re xweş tên. Hûn dibînin ku ew di nav êş û elemeke daîmî de ye. De ka meyzîne; rebeno nikare bêhneke tenê jî çavên xwe bide ser hev û bixewe!.. Hem jî zanibe ku esil huner, esil şefqet û merhemet, tehemmulkirina ji bo êş û cefaya kesên wiha ye.."

Şêx Sadî jî ev çîrok guhastiye, ev şîret kirine:

"*fezîleta di xizmetê de, ev e ku dema tu xwe xurt-hêzdar û beden-sağlem dibînî, tu bi awayekî şukirdarane barê yê lawaz bikişînî.*"

"*Dilê bi hezkirinê tije bûbe, efûkar dibe. Heke tu, ji sûretekî ziwa birrîtî û îbaret bibî, dema tu bimrî wekî gewdê te wê navê te jî bimre. Heke tu xwedî kerem û ji ehlê xizmetê bibî, temenê te, di piştî gewdê te de jî bi qeder fedakarîya te û bi qeder ku tu ketibî dilan, berdewam dike. Ma tu nabînî ku li Kerxê çendîn turbe hene. Lêbelê tirbeke din nîn e ku ji tirba Marûfê Kerxî marûftir (naskirîtir) û serdanvanên wê zehftir hebin.*"

Ehlûllah çi xweş gotine:

"Tesewwuf, ev e ku mirov bibe yar, nebe bar." Yanî kişandina barê her kesî ye û digel vê jî nebûna bar ji ti kesî re ye.

Nexasim bi xizmetên bimerhemet û fedakarane ji ummetê re li derîyên rahmê tê gerîn. Bihayê vê xizmetê, bi mezinbûnîya wê fedakarîya ku ji bo edakirina wê hatiye tehemmulkirin û bi îcrakirina wê ya bi wecda îbadetê ve bend e. Dîsa xizmeteka meqbûl, divê sirf bi ğayeya rizaya Xuda û bi uslûbeke ku berpeyvê xizmetê neêşîne, were îfakirin. Wekî ku Ebdullah bin Munazil -quddîse sirrûh- jî îfade kiriye:

"Edeba di xizmetê de ji xizmetê hê ezîztir e."

Hezretê Mewlana bi pişta xwe dana ser vê rastîyê, dibêje: "*Ji bo eşqa Xuda bixebite, ji bo eşqa Xuda xizmetê bike. Çi karê te bi vê re heye ku xelk wê qebûl bike, yan jî wê red bike? Ma di vê bazara dinyaya fanî de Xuda wek*

*kirryar û mûşterîyekî ku zehf zehf bi te bide qezenckirin Xuda ji te re, ne bes e? Ma li hemberî ya ku tu ji Xuda bistînî, ya ku însan karibin bidin çi ye!.. Naxwe çavên xwe û dilê xwe nede ser spasîyên ku ji mirovan werin, lê çavên xwe û dilê xwe li wê mezherîyeta ku ji Xuda were, vegerîne!..*"

Ha ev e sipehîtî, mezinatî û bilindahîya ku tesewwuf dixwaze dilan pê bigihîne. Di vê meyanê de Hezretê Emîr Kulal ji bo berterefkirina temayulên nefsanî yên di derûna talebeyê xwe Behaeddîn Neqşîbend -quddîse sirruh- de ev wesîyet kirine:

"*Li xweşkirina dil binêre; ji lawazan re xizmetê bike! Zeîfan û dil-şikestîyan biparêze! Ew kesên wisa ne ku ji xelkê tu dahateke wan nîn e. Digel vê jî gellek ji wan di nav hizûreke tam ya dilî, tewazû û perçiqînê de dimînin û wilo diçin. Li kesên wiha bigere, wan bibîne û xizmetê ji wan re bike!*"

Çawa Şahê Neqşîbend -quddîse sirruh-, di salên pêşî yên întîsaba xwe de ji bo bigihe halê "hîçîtî"yê ku ew dijberê ğurûr û kibrê ye, ji nexweş û êşdaran re û ji heywanên birîndar re xizmet kiriye, heta wî ew rêyên ku însan di wan re biçin jî paqij kirine û tam heft salan heyata xizmeteke wisan jîyaye ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê.

Ew bi xwe wiha vedibêje:

"Ez maweyeke (mûddeteke) dirêj di rêya ku xwaceyê min ferman kirî de xebitîm. Min hemû xizmet kirin. Şexsîyeta min hate rewşeke wisan ku dema mexlûqek ji mexlûqên Xuda birêve diçû ez li hemberî wî radiwestîyam û ez li benda wî disekinîm ji bo pêşî ew derbas bibe, piştre jî ez derbas dibûm. Vî halê min tam heft salan berdewam kir. Di hemberî vê xizmetê de halekî wisan tecellî kir ku, ez bi halekî wisan hatim, êdî min hiss dikir ku wan di sûretê nalînan de dengên ğemgîn ğemgîn derdixistin û bi Heqq ve îltîca dikirin."

Ev mîsala li jorê, ji bo xizmeta fedakarane tezahureke mûşexxes e ku mirov ji bo Xaliqê wan dîsa bi mehebbeta Xaliq li mexlûqatên wî binêre.

Cenabê Heq, di bara mûmînên salih de di ayeta pîroz de wiha dibêje: "**... Ew di xêrê de bi hev re pêşbirkê dikin**."[431] Di vê pêşbirka xêrê de berhemên guzîdetirîn ên xizmeta mûmînên salih jî dezgehên **weqf**ê ne. Pêğember û welî di zirweya însanîyetê de ne, bêguman însanên weqifkar jî ew mûmîn in ku di terbîye'ya wan de bi kemalê gihane. Weqifkaran heyecana îmanê ya di dilên

431. Alî Îmran, 3/114.

xwe de birine ji bo çarmendorên dinyayê guhastine û dîsa wan bi xwe guzîdetirîn rûpelên zêrîn ên tarîxê tije kirine.

Helbet xizmet gellek cureyên wê hene. Temamê ğeyretên ku ji bo rizaya Xuda hatine û têne kirin, dikevine çarçoveya xizmetê. ya giring; gerek maddî be, gerek jî manewî be, ew xizmet e ku di pîvana lîyaqet, îstîdad û şîyanên dilan de hatibe pêşkêş kirin. Ellah Teala, ji bo her kesî xizmetek teqdîr kiriye, li gorî aferîna wan ew ji bo karekî bi layiq kirine û ji bo vê jî derfet û îmkanên maddî-manewî jî ji bo wan bexş kirine.

Gellek îbretdar e ku di Hecca Wedaê de kêm-zêde sed û bîst hezar sehabe mewcûd bûne. Ji navbera van jî ji sed hezarî zêdetir sehabî, li curecur deverên dinyayê belav bûne û xwe di îstîqameta rizaya îlahî de ji bo xizmetê bi weqif kirine û li wan deverên ku çûbûnê jî wefat kirine. Çawa ku turbeyên zaroyên Hezretê Osman û Ebbas -Xuda ji wan razî be- li Semerqendê ne, û turbeyên gellek sehabîyan jî li Îstanbûlê ne. Beşeka mezin ji sehabîyên ku li Mekke û Medînê mane jî navenda wan deveran parastine û ew xizmetên li wir birêve birine.

Hezretê Xalid bin Zeyd Ebûeyyûb el-Ensarî di heştê û çend salîya temenê xwe de digel wî halê yextîyarîya xwe jî du sefer kirine, hatiye heta bi ber sûrên Îstanbûlê û li wir gîyanê xwe teslîm kiriye û wî însan ji bo hîdayetê bang kirine. Ev hewldan û ğeyreta wî yek ji wan ğeyret û hewldanên cîhanşimûl e ku hatine kirin ji bo mirov karibe însanan bi seadeta dinya û axretê bigihîne. Eşqa xizmetê û têkoşîna ji bo xilaskirina axretê, ew ji bo çarmendorên dinyayê sewq kirine, ajotine.

❁

Yek ji mîsalên mûazzama rûhê xizmetê jî Wehb bin Kebşe -radîyellahû anhû- ye. Turbeya vî sehabîyê mûbarek li Çînê [432]ye. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ew peywirdar kiribû ji bo bi xizmetên teblîğê li Çînê rabe. Haleveku bi şertên wî zemanî Çîn di mesafeya salekê de dûr bûye. Ev sehabe heta bi wir çûye û piştî mûddeteke dirêj li wir teblîğ kiri-

432. Li bajarê Guangzhou'yê Çînê meqamek heye, tê gotin ew meqamê Se'd bin Ebûweqqas -radîyellahû enhû- e.. Rastîyeke malûma tarîxî ye ku qebrên eshabê kîram û goristanên ehlûllah di pirranîya deman de li kîjan deverê bin, di zindegirtina hestên dînî yên xelkên wan deveran û parastina dîndarîya wan de bi bandor û kartêker in. Çawa li Asya'ya Navîn li Semerqendê, li Buxara'yê û li Tirkistan û Taşkentê jî gellek nimûneyên vê mewcûd in..

ye, dilê wî bi hesreta Resûlûllah dipijîya, ew bi hêvîya ku piçekê kesera dilê xwe bide sekinandinê ketiye ser rêya Medînê. Piştî rêwengîya bi çilekêşîya ku salekê kişandî ew bi Mendîneya nûrdar wasil bûye, lê mixabin ji ber ku hingê Resûlûllah wefat kiribû, wî ew nedîtiye. Ew di nav îdraka qudsîyeta wê xizmeta ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ew ji bo wê peywirê şandibû û ferman li wî kiribû de dîsa vedigere Çînê û wî li ser kar û xizmeta xwe gîyanê xwe teslîm kiriye.

Ev keval û tabloyên wê xizmeta mûhteşem û fedakarane ne, ku însan dikare bes bi wecda îmanê di bin barên wan de rabe û taqeta wî bigihe wan. Eşq û gîyanê her yekî ji wan ji bo xizmetê, di hukmê stêreke berraq de ye ku her yek ji wan ji bo me rêya rizgarîya ebedî rohnî dikin.

Hîç şiwar û şek nîn e ku eshabê kîram di ronahîya tealîm û terbîya mûstesna'ya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de di mijara xizmetê de nemaze ev her neh xusûs bi titîzî rîayet kirine û bi vê mertebê nail bûne, gihane:

1. Xizmeta ji Xudê Teala re; bi her hezkirin û sedaqetê bi bicihanîna ferman û qedeğeyên wî çêdibe,

2. Xizmeta ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re; bi jidilûcan hezkirina ji wî û bi jîyîna li ser sunneta seniyye'ya wî çêddibe,

3. Xizmeta ji mezinên Îslamê re; bi ji wan re şanîdana hezkirin, wefadarî û sedaqetê çêdibe,

4. Xizmeta ji dê-bavan re; bi qezenckirina rizaya wan ya bi jê re negotina ofê jî çêdibe,

5. Xizmeta ji zaroyan re; bi temînkirina perwerdekirin û gihandina wan ya wek mûmînekî salih çêdibe,

6. Xizmeta ji xizman re; bi qîmet-pêdana sileya rahmê û bi îhsan-kirina li wan çêdibe,

7. Xizmeta ji mûmînan re; bi parvekirina şîn û şahîyên wan, çêdibe,

8. Xizmeta ji hemû mirovan re; bi kar kirinê ji bo mirov bi destên xwe û zimanê xwe bifeyde bibe, çêdibe,

9. Xizmeta ji mexlûqatan re; bi xistina hemû heyberan di bin perên xwe yên şefqetê de, çêdibe.

Di xusûsa îfakirina van hemû xizmetan de ev îfadeyên Hezretê ‘Elî Ramîtenî pirr îbretdar in:

“*Ewên ku bi minnetê (bi awayê dana rûyê wan) xizmetê dikin pirr in. Lêbelê ewên ku xizmetê nîmet dizanin pirr hindik in. Heke hûn bidestxistina firsenda xizmet-kirinê nîmet bizanin û ji mirovê ku hûn xizmetê jê re dikin re, minnetbar bimînin, wê herkes ji we memnûn bibe û wê gileh û gazindên we jî kêm bibin...*”

Heke haya me jê hebe, yan jî haya me jê nebe di esilê xwe de tişta ku em tev lê digerin, selametîya rûhê me ye, yanî gihiştina rûhê me bi hizûr û aramîyê ye. Ev jî xezîneyeke derûnî ye ku mirov bes bi wecda îbadetê bikare wan xizmetan îfa bike. Bi vê sedemê mûmînekî ku xwedî rûh û hesta xizmetê be, ewê di her hal û karî de bizane ji bo xwe wasîte û firsendên xizmetê peyda bike. Di fedakarîyên ku ew ji bo rizaya Xuda dike de wê hirs û ğeyretên wî ji hirs û ğeyretên wan kesan zehftir bin ku bi pey menfîatên dinyewî dikevin û ji bo emancên xwe wan şanî didin.

Ew arzûya xizmetê ku di keş û hewaya îşqê de tê xwedîkirin, dema cihê xwe di qelb de bibîne, bendeyî dixe seyyahê bêdawîtîyê. Qelb, ji dilhişkîya Heccacê Zalim derdikeve, postê şefqetê yê Yûnus li xwe dike. Ew îlm, huner û exlaqê ku bi vî rûhî têne qezenckirin, bi ebedîyeteka mestker digihe. Li ser vî esasî xizmetên semîmî û rasteqîne, şahesera kemala dilî ne. Qelbên wiha “nezergeha îlahî” ne.

Dema hal ev e, vêca derbaskirina temenê xwe bi awayekî ji mezîyetên qelbî dûr, çi xusraneke mezin e. Xwezîya me bi wan kesan be ku karîne dilê xwe bi maneyeke rasteqîne bi îşqa xizmetê tije bikin!

### d. Teweccuh

Teweccuh, ev e ku mûrşid berê hemû hêza manewî’ya xwe bide ser dilê mirîdî û bi vî awayî halê xwe ji bo wî biguhêze. Bi îfadeyeke din, teweccuh ev e ku mûrşidê kamil halên sipehî yên xwe ji bo mirîdî bide guhastin û di encamê de di rûhê wî û qelbê wî de tesewwufatîyê bike. Ev jî gellek wasîteyên eslî û fer‘î yên wê hene.

Emê ji wasîteyên vê teweccuhê jî behsa “**çav** (nezar) û “**cewher**”ê bikin.

## Çav (Nezar):

Çav, wasîte û navgîna nêrînê ye. Bi vî awayî ji ber ku ji bo kartêkera ku çêbûye, peyva “çav” hatiye bikaranîn, bi vê jî ew karê “nezar”a ku wî kiriye, yanî “nêrîn” tê qesdkirin. Lêbelê di navbera xelkê de peyva “nezar”ê bi zêdetir ji bo wê tesîrê tê bikaranîn ku bi meyzandinê tê hisûlê. Di ser vê de jî bi nezarê sade neyînî û menfîya vê tesîrê, tê qesdkirin. Dema nezar, yan jî “îsabeta ‘eyn” “lêketina çav” were gotin, hingê îfadekirina wê zirara maddî yan jî manewî tê xwestin ku ew bi meyzandina kesekî tê hisûlê. Di hedîsa şerîf de îşaret bi vî alîyê nezarê jî hatiye kirin, hatiye gotin:

“*Lêketina çav (nezar) heq e.*”[433]

“*Nezar, însanî dibe qebrê, hêştirê jî dixe beroşê (dikuje)*.”[434]

Bi vê maneyê zanîn û heta mûşahede di bara tesîr û kartêkera nezarê de xerca alemê ye. Yanî rastîyeke wisa ye ku ji terefê her kesî ve tê zanîn û qebûlkirin. Lêbelê ew tesîra ku bi çav tê meydanê -wekî ku xelk zen dike- sade ne bizirar e, çêdibe ku ew wek bifeyde jî xuya û tezahur bibe. Sedemê vê jî ji çavê ku dinêre berê tîrêjekê bi alîyê mûxatebî ve tê dayîn ku mahîyeta wê tam nayê zanîn. Tasîr, ji wesfê musbet, yan jî menfîyê vê tîrêjê dize, diwelide.

Di zemanê me de zanînên fîzîkî di bara şûaê (tîrêj)ê de ew qeder bipêşve çûne ku didin îcabkirin em tesîra wê wek rastîyeke îlmî û zanistî qebûl bikin.

“**Lazer**”a ku di vê serdemê de hatiye keşifkirin jî cure şûaek/tîrêjek e. Ew îro rastîyek e, ji terefê herkesî ve tê qebûlkirin û zanîn ku pê hesinê sitûr têne birrîn û amelîyat pê têne kirin. Li alîyê din jî li hemberê şûaê hinek cism û nemaze eksulamelên ku rengên wan şanî didin hene. Ji xwe ev yek ji berê ve malûm e.[435]

---

433. Buxarî, Tib, 36.
434. Suyûtî, el-Camîus-Seğîr, II, 60.
435. Li hinek pirtûkxaneyan perdekeke kesk bi ser çîrokên ku têne xwendin de radixin. Ev, ji bo rêgirtina li ber westîna çavan e. Lewra çavê însanî dema li derya û asoyê dinêre, çawa bêhna xwe vede, wekî vê dema li rengê kesk binêre jî rewş aynî ye. Di havînê de bi umûmîyet lixwekirina mirovan ya cilên sipî bi vê sedemê ye ku ev reng tîrêjên tavê bi şûn de dide xuyakirin. Bertek û reaksîyona rengê reş li hemberî tîrêjan jî tam berovajî ye. Cilên reng tarî jî tîrêjên tavê bi şûn de nadin xuyakirin, wan diqurpînin. Ji ber vê ye ku ew laşê însanî germ digrin. Doktor, di hundurê nexweşxanê de digel ku bi pêşmalên sipî ku sembola paqijîyê ye, digerin jî lêbelê di amelîyetxaneyan de di

Di hemberî tîrêjên ku ji çavan derdikevin de ew tesîra ku di heyberên maddî de tê hisûlê, hem ji bo kesê ku dinêre, hem jî ji bo kesê ku lê tê meyzandin her dem ne di heman dereceyê de ye. Bi rastî tîrêjên ku ji hinek çavan derdikevin -dixwaze bila menfî be, dixwaze jî bila musbet be- wekî ku xurt in, bandor û tesîrên van tîrêjan di her mûxatebî de jî ne yek in. Lewra di hinekan de amadekarîya mûteessir bûnê (tesîr-lêkirinê) zêde ye, di hinekan de jî ew zehf hindik e. Xelk, însanên ku ji çavên wan tîrêjên xurt lê menfî dertên, navê "**çavxirab**" yanî "**nezarçî**" lê dikin û hewl didin xwe ji nêrîna yên wiha biparêzin.

Rastîya nezarê heta di hinek heywanan de jî carî ye, heye. Mesela nêrînên marê bi navê margîskê ew qeder bi bandor in ku dikare bibe sebeb ji bo jineke avis ber bavêje û heta bibe sersebeb ji bo hinek gîyanewer û candar bimrin.[436]

Çawanî û keyfîyeta "**nezar**"ê ku xelk -çendan ne bi zanyarî be jî- lêbelê bi hissî, yan jî bi neqlî dizane, ji lewma di tesewwufê de jê re roleke mezin di terbîya salikî de heye. Lewra mûrşidên kamil, ew kes in ku di encama rîyazat û paqijbûna qelbî de tesîra hêzê ya di nezara wan de bi heddê ezamî derketiye. Ev selahîyet û qudret, ji Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- wergirtine ku ew bi xwe warisên wî ne.

Di bi qedemebûnîya manewî ya însanîyetê de sîlsîleya pêğemberan di rêzebendîya yekê de cih digrin û di pey wan de jî "eshabê kîram" tên. Peyva "sehabe" ku ji heman koka "sohbet"ê hatiye çêkirin, wan kesan îfade dike ku îman anîne û bi şerefa çûna sohbeta feyzbexşa Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- naîl bûne. Lêbelê sebebê bûna şan, şeref û îtîbara di wan de mewcûd, bereketa mûşerrefbûna wan ya bi sohbeta Pêğember e kartêkera esil, keyfîyeta mûxateb-bûna wan bi nezar û nêrînên wê hebûna mûbarek e.. Bi rastî çendan ji bo "sehabîtî"yê behsa qistas û endazên curecur hatibe kirin jî ji navbera van jî yên ku zehf têne zanîn ev e ku îman anîbe û ji nêrînên Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- re bûbe mûxateb. Yanî qistasa

---

nav cilên kesk de têne dîtin ku ew ji rengê navzikê camê nêzîk e.. Ev rewş, ji ber vê ye ku rengê kesk çavan nawestîne, tam berevajî vê taybetmendîya rengê kesk bêhna çavan vedike. Li alîyê din di zerê tarî û şînê tarî de jî amadekarîya bi alîyê xwe ve kişandina tîrêjê û mêhtina wê heye. Bi hizra ku ji bo nêrîn zirarê nedin zarokan yanî bi îfadeya xelkê ji bo "nezar lê nekeve" zêr yan jî morîka şîn bi wan ve tê kirin, ev hizr li ser van sedeman hatine sazkirin.

436. Binêrin. Buxarî, Bed'ul-xelq, 14.

sehabîtîyê ev keyfîyet e ku li Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- meyzandibe û ji nêrînên wî re bûbe mûxateb..

Welîyekî ku di jortirîna merteba ewliyaullah de be jî dîsa hîç bi ti awayan qîyasa wî bi sehabîyekî di merteba jêrtirîna wan de be jî nayê kirin. Lewra di sehabeyî de ferqeke mezin mewcûd e ku ew ji mûxatebbûna bi nezara pêğemberî diwelide û qezenckirina wê hîç bi ti handereke din ne mûmkin e.. Mislimanên ku di piştî Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de hatine, ji ber ku bi vê nezarê naîl nebûne, ew bi meqamê sehabîtîyê negihane.. Dîsa ew mûmînên ku bi dîtina wan sehabîyên ku bi şerefa dîtina Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- bi mezher bûne, şerefmend bûne "tabîîn" in, ew mûmînên ku bi dîtina tabîînan jî şerefmend bûne, "tebeê tabîîn" in.

Digel vê jî hezaratê ewliyaullah ji ber ku di gelîyê manewîyata Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de warisên teserrufatîyên wî ne, ew jî di vê babetê de xwedî selahîyet û îqtîdarekê ne, ku qiyasa wan bi dîgerên wan re nayê kirin. Bi vê sedemê ye ku bi awayekî layiq ji bo îstîfadekirina ji mûrşidekî kamil, sade bûna ji hezkirîyên wî tenê ne bes e, lêbelê qezenckirina şeref û feyza mûxatebbûna bi nezara nûrdara wî şert e..

Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye: "*Xwe ji feraseta mûmînî biparêzin! Lewra ew, bi nûra Xuda dinêre.*"[437] Îşaret pê daye ku feraseta her mûmînî bi qeder îmana wî dibe. Li ser vî esasî, feraseta ewliyaullah jî ku ew mûmînên kamil in, li gorî dîgerên wan zehf xurttir e.

Îqaza "xwe biparêzin!" ya ku di hedîsa şerîf de hatiye zikrkirin, dibêje; "bi hesabên veşartî û bi dilên şîlo neçin hizûra mûmînên kamil! Lewra ew, bi feraseteke mûstesna tişta ku hûn hewl didin vedişêrin, dibînin." Lewra ewên ku nezara wan bi vê hêzê gihaye ji ber ku perdeyên zahirî ji ber wan zaîl bûne, rabûne, rastî ji wan re bi awayekî sade 'eyan in. Ji lewma parastina zimanê xwe li pêşber alimî û mûhafezekirina dilê xwe li pêşber arifî, îcaba edebeke dînî ye.

Ji ber ku çav (nezar) yek ji wasîteyên giringtirîn e ku mûrşidek wê wek metod di terbîyê de bikartîne, ji bo salikan gihiştina bi nezara mûrşidê xwe, wek bextiyarîyeke mezin hatiye qebûlkirin.

437. Tirmizî, Tefsîr, 15.

## Bîranînek

Ew sal bûn ku min di wan de lîseya îmam-xetîbê dixwend. Min bi navê Ahmed Can însanekî dilî yê sipehî nas kir. Ew ji Pakistanê bû. Ji Hezretê Samî Efendî re bûbû meftûn. Wî pirr ji bavê rahmetîyê min Mûsa Efendî -quddîse sirruh- jî hez dikir, nedixwest ji cem wî cuda bibe, here. Çawa gava ew dem bi dem ji bo serdana Hezretê Samî Efendî dihate Tirkîyê, ew li wê mêhvanxaneya li nav bexçê me dima.

Dilê wî bi hezkirineke ew qeder kûr tije bû ku di rojên sohbet nebû de jî ew bi îştîyaqa dîtina Hezretê Samî Efendî dihelîya û li hawîrdora mala Hezretê Pir digerîya û wilo disekinî. Wî şevekê çawa bi hisûlê hatina vê hezkirinê di xwe de wiha neqil kir, got:

“Demsaleke hecê bû. Ez li Rewza Mûtehhera, li cihê ku jê re eshabê suffe digotin rûdiniştim. Di navberekê de zatekî mûhterem ê ğayet zarîf, rûpak û dema mirov li sîmayê wî dimeyzand jî wî Xuda di bîra mirovî dianî, ew digel cemaeteke nûrdar di pêşîya min de derbas bû. Dema ew tam li dehma min bû **nezar**ek wiha ji bo (min) feqîrî lutf kir.

Ha bi nezara wan çavên ferîşteyî ji nişka ve ez çûme nav keş û hewayeke din, ez çûme dinyayeke cuda. Her tişt guherî. Ez bi çêja manewî ya ku min girtî bûm wekî ku min xwe winda kir. Ji nişka ve ez ji bo wî însanê bêemsal bûme meftûn, ez ketibûme halekî nîv jixwe çûyî. Piştî demeke kurt dema ez bi xwe hatim, derhal min hewlda wî zatî bibînim, lêbelê bicihhatina vê daxwaza min di navbera wê elêlata meşhûra Rewza’ya Mûtehhera de mûmkin nebû.

Bi hizra ku ewê dubare ji heman deverê ve vegere, min destpê kir li wir li benda wî mam. Şukir ji Xuda re, hêvîya min pûç derneket. Min bi keyfxweşî ew şopand û li pey wî çûm. Mirovên li hawîrdora wî di her hal û karî de ez parsek zen kiribûm ji lewma çend kes ji wan ji min nêzîk bûn û xwestin sedeqê bidin min. Lêbelê min ew daxwaza wan qebûl nekir. Di esilê xwe de ez ne mirovekî dewlemend bûm jî lê bi bereketa nezarên wî zatê salih her tiştê dinyayî di çavê min de qîmetê xwe winda kiribû û êdî di deryayeke curbicura qenaetê de ğerq bûbûm. Di nîhayetê de ew gihane malekê û çûne hundurê wê. Dema min jî xwest li dûv wan herim navê, ewên li cem wî ji ber ku ez nas nedikirim ğayet tebîî bû ku ew ji bo min bûne asteng. Lêbelê ew sultanê arifan Hezretê Samî li pey xwe vegeriya û lutf kir, ji bo çûna hundur lutf li min jî kir. Ew roj, li wê malê ez ji bo çendîn tecellîyên wî zatê mezin, **nezar** û **teweccuh**ên wî bi mezher bûm.

Elhemdûlîllah, bi wan nezar û teweccuhan temamê jîyana min guherî, keşxe û sipehî bû û êdî ez bûme însanekî zehf letîf ê dinyaya ebedî. Vêga ez her sal miqdarek dirav berhev dikim û ez tême van deveran, ji bo karibim ji nezar û teweccuhên wî îstîfade bikim, ev ji bo dilê min mezintirîn qezenca manewî ye û tekane neşwe ye."

### Cewher (Hêza Rûhanî):

Cewher, bi bandortirîn û kurttirîn wasîte ye ku mûrşid ji bo teserrufkirina di gîyan û qelbê mirîdê xwe de wê bikartîne. Ev, bi awayê bikaranîna "sirr"ê ya di welî de bi gotina "quddîse sirruh" tê îcrakirin. Bes ewê ku wê bikartîne mahîyeta vê wasîteyê dizane. Ev di tesewwufê de dikeve nav beşa hal de, ji ber ku ew ne ji beşa qal e, (peyvê ye) di pirtûkan de cih nagire.

### e. Dûa

Wasîteyeke din ji wan wasîteyên ku mûrşidê kamil di mijara ber û ali şanîdana ji bo salikê xwe de serî lê didin jî dûa ye. Ev jî keyfîyeteke ku ji bendbûna bi sunneta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- welidîye, zaye.

Wekî ku tê zanîn Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- berî misliman bibe, qesda sûcê kuştina Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- kiribû ku ew dehşetdartirîn û xirabtirîn curm û guneh e ku însanek karibe wî tesewwur bike. Lêbelê bi bereketa dûaya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ku jê re kiribû û ew pêşî bicih hatibû, ew ji wê qesda xwe vegerîyabû û bi hîdayetê gihabû. Weqaet û bûyerên wekî van di jîyana Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- de pirr in.

Dîsa wekî malûm e, qebîleya Seqîfê ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bigre heta bi dorpêçana Taîfê gellek ezîyet gihandine mislimanan. Vêca dema ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hate talebkirin ku ew bêdûayî û nifiran li êlê bike, wî Pêğemberê rahmê ji bo hîdayeta wan dûa kiriye. Vêca bi bereketa dûaya wî ji wan re jî ew qebîle di piştî maweyeke (mûdeteke) kurt û ne dirêj de misliman bûbû û hatibû hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-.[438]

438. Binêrin. Îbn-î Hîşam, es-Sîre, IV, 103.

Sehabîyekî bi navê Şeybe vê weqaetê diguhêze, neqil dike:

Roja Huneynê ez bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re di cengê de pişkdar bûm. Lêbelê ne ji ber ku ez misliman bûbûm û min pêğember qebûl kiribû, sade ji ber ku leşker berhevkirina êla Hewazan ji bo Qureyşîyan û şerr destpêkirina wan li zora min çûbû, min şerr dikir. Di esnaya mûharebê de dema bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re bûm jî min jê re got:

"-Ez hespên (alaya wan) reş û sipî dibînim."

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji min re got:

"-*Ya Şeybe! Bes kafir van hespên ku ji bo arîkarîya mislimanan hatine, dibînin*." Piştre wî destê xwe li pişta min da, dûa ji min kir û wiha got:

"-*Ya Rabbî! Hîdayetê bide Şeybe*." Wî ducar û sêcar jî heman dûaya xwe dubare kir û destê xwe li pişta min da. Cara sisêyan dema wî destê xwe ji ser pişta min rakir, êdî ji bo min li ser rûyê erdê ti kesî ji wî hezkirîtir nebû."[439]

Dêya rîwayetkarê navdar Ebûhûreyre jî digel hemû teklîfên ku kurê wê lê kiribûn ji bo ew were îmanê red kiribûn jî lê dîsa di dawîyê de bi bereketa dûaya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gihabû hîdayetê.[440]

Mûessirîyeta dûayê di warisên Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de jî di dereceya ezamî û mezin de ye. Ev jî ji bo teserrufeke bibereket yanî ji bo îslahê navgîn û wasîteyek e.

Dûa, di her hal û karî de encamekê hasil dike. Heke daxwaza di dûayê de ji "qedera mûleq" re mûxalif bibe û bi vê sedemê jî bê encam bibe, hingê îkrama îlahî ya di hemberê wê de wê li axretê tecellî bike. Ev xusûs bi hedîsên şerîf jî sabit e.[441]

Li alîyê din ji bo dûa karibe bereketekê hasil bike jî, ne şert e ku ew ji şexsîyeteke bilind û salih sadir bibe. Ji bo bereket hasilkirina dûayê hema têrê dike ku dûa, bi dilekî xalîsane hatibe kirin û têde ciddîyet hatibe arzûkirin. Di vê rewşê de dûaya mûmînekî ji bo birayê wî qîmetekî mezin îfade dike; çendan ew mûmînê ku ji birayê xwe re dûa kiribe, gunehkar be jî. Lewra Cenabê

439. Binêrin. Mûslim, Fezailus-Sehabe, 158.
440. Binêrin. Ahmed Îbn-î Henbel, Musned, III, 18.
441. Binêrin. Ahmed Îbn-î Henbel, Musned, III, 18.

Heq, berê xwe ji bendeyê xwe nevegerandiye û jê neqerîyaye çi qeder ew gunehkar dibe bila bibe. Heke wisan bûya, vegotina çewtî û xetaya mirovekî qusûrmend bi navê "**ğeybet**"ê wek gunehekî mezin îlan nedikir.

Bi vê sedemê -hesbe'l-beşer- heke ew kesên ku ji gunehan salim nemane, bi vê hizra "ma wê çi ji dûaya min derkeve!" dûa ji ummeta Mûhemmed re û ji hezkirîyên xwe re nekin, tevger û bizaveke şaş e. Lewra dûaya bendeyê ji her bendeyan gunehkartir jî ji dîgerên wî re, heke ew ji dilekî xalîsane hatibe û wekî ku ew ji bo xwe xwestibe wisan ji dîgerên xwe re jî xwestibe, ewê bi awayekî fewqelade qebûl bibe. Bêşiwar Cenabê Heq kîjan bendeyê xwe bixwaze, helbet dûaya wî qebûl dike.

Bi vê wesîleyê piçekê behskirina ji hinek xusûsîyetên dîgerên dûa wê bi feyde bibe:

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di her firsend û bi her wesîleyê wesîyet li mûmînan kiriye ku çi di hizûra hev de be çi jî di ğiyaba hev de be ew her ji hev û din re dûa bikin. Dema Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ji bo destûra çûna umrê jê bixwaze hatibû hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re gotibû;

"-*Birayê min, me jî ji dûayên xwe jibîr neke*!"[442] û ji bo xwe dûa ji wî taleb kiriye.

Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- halê xwe li pêşberî vê taleba îltîfatkar bi van hevokên xwe îfade dike, dibêje:

"-Ew qeder ez keyfxweş bûm her wekî ku dinya hemû bûbe ya min."

Bêşiwar Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- li cem Xuda ji hemû mexlûqatan bi şereftir e. Digel ku ew wisa ye jî lêbelê dîsa wî Nûrê Hebûnê ji ummeta xwe dûa taleb kiriye. Ev rewş ji bo zatên ehlê kemalê jî, işaret pê dide ku ew dikarin ji dûayên mirovên ku bi meqamê xwe ji sewîya wan kêmtir in jî îstîfade bikin.

Dîsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- re gotiye:

442. Tirmizî, Deawat, 109; Ebûdawûd, Witr, 23.

"*Çêtirînê tabiînan mirovê bi navê Uweys e. Heke ew, li ser navê Xuda sûnd bixwe, Cenabê Heq dê wî di sûnda wî de hemin sadiq derîne. Êdî kî ji we çav li wî bikeve, bila ew ji bo we meğfîretê taleb bike.*"[443] Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- jî di dawîyê de çav li Hezretê Weysel Qaranî ketiye û ji bo xwe dûa ji wî taleb kiriye.

Wekî ku hate dîtin naxwe ji bo def'a belayê û celba xêran ji zatên salih û xwedan fezîlet dûa taleb kirin, yek ji wan wesîyetan e ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi xwe ew şîret li ummeta xwe kiriye.

443. Binêrin. Mûslim, Fezailu's-Sehabe, 223-225.

"**Tu** (daîm) **rêya efûyê bigre, şîreta qencîyê bike**."[444]

## E. USLÛBA TESEWWUFÎ

### 1. HÎDAYET Û USLÛBA RAHMÊ

Mûrşidên kamil ên ku di tesewwufê de bi qeder naveroka îrşadê ehemmîyet û giringîya uslûbê wê jî baş dizanin, di vê babetê de rêyeke nebewî taqîb kirine û ji bo çendîn hîdayetan bûne wesîle. Ew di warê pêşxistina terbîya manewî ya salikên xwe de bi şefqet û merhemet nêzîkbûna ji wan ji bo xwe bi destûr û qaîde kirine û wan bi vî awayî netîceyên berhemdar û bifêkî bidest xistine. Jîyana dostên Xuda ji mîsalên bêjimar ên bi vê babetê re elaqedar tijene. Ev qisseya Hezretê Îbrahîm Heqqî'yê Erzûrûmî pirr îbretdar e:

Hezretê Îbrahîm Heqqî di Remezana Şerîf de ji bo kirina wa'z û nesîhetan ji gundekî Erzûrûmê re hatibû dawetkirin. Ewê bihate wergirtin û ji bo gund bihate anîn, ji bo vê xizmetê jî xizmetkarek ji ğeyrê mûsliman ku ev kar di hemberî dirav û heqdestê de dikir û hespek hatibû şandinê. Ew derketibûn ser rê. Lêbelê ji ber ku heywanê siwarbûnê yek bû, Hezretê Îbrahîm Heqqî, di vê rêwengîya xwe de exlaqê hemîde yê Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- tetbîq kiribû ku dema ew çûbû Qudsê, bi koleyê xwe re bi dor li hêştirê siwar bûbûn. Xizmetkarê ğeyrê mûslim heke çi qeder îtîraz kiribe û gotibe:

"-Heke gundî vê rewşê bibihîzin, ewê li erza min bidin; wê heqdesta min jî nedin!." Lêbelê Hezret dîsa jê re got;

"-Ewladê min, halê me yê di nefesa dawîn de mechûl e! Tu endîşe dikî ku gundî li erza te bidin, lêbelê ez jî ji wî hesabê mezin ditirsim ku wê di hizûra Xuda de were dayîn!.." û Hezret karê bi dor siwarbûna li hespî xiste rêza dorê.

444. 'Eraf, 7/199.

Hikmeta îlahî di wê dema ku ew diçûne nav gund de aynî wekî ku di mîsala Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- de jî wisan bû, dora xizmetkarî hat. Mêrikê reben ji gundîyan ditirsîya, wî eşkere got; min ji heqê xwe ferağet kiriye û bi israr ji Hezret xwest ku ew li hespî siwar bibe. Lêbelê Hezretê Îbrahîm Heqqî jê re got;

"-Dor ya te ye!" kir ku ew li hesp siwar bû û ew jî li pêşîya hespî çû nav gund.

Dema xelkê ev rewş dît, hawîrdora xizmetkarî girtin û destpê kirin bi van îfadeyên curecur li erza wî dan, jê re gotin:

"-Wax kêmaqilo! Tu li xortanîya xwe nanêrî, pîçaqên xwe bi ser hespî de berdidî û tu vî kalê rihsipî seyda jî bi peyatî birêve dibî ha! Ma sedaqeta te ev e! Ma me wiha tenbih li te kiribû!.."

Dema rewş di vê minwalê de bû, Hezretê Îbrahîm Heqqî mesele ji wan re îzah kir, vêca wan jî dest ji erzşikandina wî xizmetkarî berdan. Di vê navê de yekî ji gundîyan gazî li xizmetkarê nemisliman kir û jê re got:

"-Mêro! Te ev qeder fezîlet dît û te ew jîya! Naxwe hema qet nebe misliman bibe!"

Xizmetkar di piştî huşbûna ji bo deqîqekewk du deqîqeyan de ji bo mirovên li wir ev hevoka bi îbret got:

"-Heke hûn ji bo dînê xwe bang li min dikin ev qet çênabe! Lêbelê heke hûn min ji bo dînê vî zatê mûbarek bang dikin, min hê di rê de îman bi dînê wî anîye!.."

Ev mîsala ku ji terefê dostekî dilfereh ê Heq ve hatiye şanîdan, uslûbeke hîdayet û rahmê li holê datîne. Divê mirov li însanî, hê zêdetir li cewhera wî meyzîne û li gorî wê tevbigere. Maneyeke wê jî ev e ku mirov karibe bi nêrîna Aferînerî li aferîndeyan meyzîne. Ji lewma dilên salih, ji ber ku şerefa "**xelîfe**"yê Cenabê Heq li ser erdê ji însanî re hatiye bexşkirin û ji ber ku haya wan ji îfadeya di vê ayetê de heye; Rebbê te "**ji rûhê** (sirrek ji qudreta) **xwe têde pif kiriye**."[445] Ew bi nêrîna Xaliq li mexlûqatên wî dinêrin. Bende, çi qeder bi gunehan lewitî be, bila lewitî be dîsa ew li mûkemmelîyeta cewhera di bendeyî de dinêrin û pişta xwe nadinê. Ew bi hêsanî hêvîya xwe ji însanî nabirrin û dikin ku ew jî hêvîya xwe nebirre. Ev sebebeke aqilî û hissî ye ku

445. Binêrin. Sûretê Hicr, 15/29.

bi rastî nayê înkarkirin. Çawa Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de ji her navekî xwe yê din zehftir navên xwe yên "**Rahman** û **Rahîm**" li me daye hînkirin. Heta Xudê Teala di Qur'anê de bi navê şîrînê xwe, er-Rahman sûretek nazil kiriye ku maneya wî ev e; merhemeta Xuda li ser hemû mexlûqatan şamil tê û yekem ayeta wî sûretî jî bi "er-Rahman" destpê kiriye.

Bi nêrîna li encamê, em dibînin ku ev uslûb, yanî uslûbê meyzandina ji pencereya hîdayet û rahmê ve li însanî û nêzîkbûna ji wî, di tehsîlkirina emancan û gihandina meramê de ji hemû uslûb û rêyên din bi berekettir e. Ew di birina zengarê ya ji dilan de û di safîkirina madenên giranbiha de ji hemû uslûb û rêyên din bilindtir û bikêrhatîtir e.. Ew uslûb ji rizaya îlahî re aheng-dartir e, û ew di nav xwe de taybetmendîyekê dihewîne ku ew sipehîtîyên ulwî yên di însanî de meknûz geş û xweş dike. Ew uslûbeke wisan baş û giring e; hem ji bo yê ku wê tetbîq dike, hem jî bo yê ku ew li serê tê tetbîqkirin, yanî ji bo herdu terefan letafet, mûkemmelîyet, mehebbeteke cuda û xeslet û exlaq dide qezenckirin û reğbeta dilên wan dixe gihiştina digel Xudê Teala. Lewra ev uslûb, wesfeke wisan baş û giring e ku ev uslûb, ew îksîr e ku Yûnûsan bi Yûnus û Mewlanayan bi Mewlana dike û ew ji bo çendîn rûh û gîyanên ku ji hêla maneyî ve li ber mirinê ne, wekî ava heyatê wan sağ dike.

Ji lewma tesewwuf, gerek naveroka wê, gelek jî bikaranîna uslûba wê di teblîğkirina Îslamê ji bo mirovan de her dem giringîyeke mezin erz kiriye. Rastîyeke tarîxî ye; di wê serdema ku bi dagirkerîya Moğolan lerze li nîzama îctîmaî ya Anadolê ketî de mutesewwifên mezin ên her wekî Hezretên Mewlana û Yûnus Emre gihane, perwerde bûne, her yek ji wan adeta bûne serkehnî û nehla silh û selah, haştî, aramî û hizûrê. Wan ji bo girseyên ku bêzar bûbûn, ji bo birînên ku xwîn ji wan dihat û ji bo dilên westiyayî şîfa û tesellî pêşkêş kirine.. Wan, çendîn ğafil wekî wan nexweşan wergirtine, teleqqî kirine ku ew li benda xilasbûnê ne, û ew di serdêrîkirin û mûameleyên xwe de tim û daîm ji "kîn û nefretê" dûr jîyane.

Yûnus çi xweş dibêje:

*Ez ji bo dawê[446] nehatime*
*Karê min ji bo hezkirinê ye,*
*Mala dostî dil in,*
*Ez ji bo çêkirina dilan hatime!*

446. **Dawê**: Doz, îddîa.

Ev şexsîyetên mezin ji ber ku ji bo çêkirina dilan hatine, wan tim û daîm ji pencereya dil ve li mirovan meyzandine, wan tim û daîm mehebbet û şefqet li hawîrdorên xwe belav kirine û ew ji bo hîdayeta çendîn mirovan bûne wesîle û navgîn.. Heke wan bi berevajî van bizavên ciwan û bifîraset hereket kiribûna, di encamê de bi temamî îrtîbat ji wan mirovan qut dibû ku di navbera wan de wekî kendalekî ferqeke mezin hebû û di dawîyê de îmkana teblîğa Heqîyê ji bo mirovên wekî van jî zayî dibû. Ev jî bi berevajî mûrada îlahî dibû. Lewra Cenabê Heq dixwaze bendeyên wî ji teqana ku ketine navê rizgar bibin. Ji lewma di dirêjahîya tarîxa însanîyetê de bi hezaran pêğember ji mirovan re şandine û ferman li pêğemberên xwe jî kiriye ku ew bi uslûba ji her uslûban sipehîtir dilên xelkê tezkîye û paqij bikin. Dîsa ji bo heman ğaye û emancê ehlûllah ji mirovan re lutf kirine û wan jî di terbîya manewî ya xwe de ev uslûba nebewî dane dewamkirin.

Rebbê mezinê me ku tekane serkehnîya şefqet û merhemetê ye, wê uslûba bi bandora ku divê di bangkirina bendeyên wî ji bo dînê Heq de were taqîbkirin wiha eşkere dike, dibêje:

“(Ey Resûlê min!) **Bi hikmet û şîretên sipehî** (însanan) **ji bo rêya Rebbê xwe bang bike** (û di rewşa lizûmê de jî) **bi uslûba ji her uslûban sipehîtir bi wan re têbikoşe.**.”[447]

“**Ma gotina kê ji ya wî kesî sipehîtir e ku gazî dînê Ellah dike, amelê salih dike û dibêje; ez ji mislimanan im! Qencî û neqencî wekhev nabin! Tu hewl bide bi terzeke sipehîtir rê li ber neqencîyê bigre. Ew çax, tu dê bibînî ku wa ye, ewê di navbera te û wî de neyartiyek jî heye, ji bo te bûye her wekî dost û yarekî nêzîk**.”[448]

Di encama tetbîqkirina vê uslûba îlahî ya ku hatî tewsîyekirin de di tarîxê de çendîn rûh û gîyanên ku bistrî bûbûn jî bi gulê wergerîyane û sîne û singên wekî zîndanan reş-tarî jî di nûrê de ğerq bûne.

Bi hereket kirina ji vê heqîqetê Hezretê Mewlana -quddîse sirruh- di bara giringîya li ser rêya rast biîstîqametkirin û siwarkirina hemû mirovan de; vêca hîç ferq nake çi ew mirovên bêbawerî bin, çi jî ew însanên gunehkar bin û di vê mijarê de di bara uslûba pêwîst de jî wiha şîret kirine, gotiye:

447. Nehl, 16/125.
448. Fussîlet, 41/33-34.

“*Hesin digel ku ripûreş û bênûr e jî, dema ew were paqijkirin û cîla lê were xistin zengar û qilêr ji ser wî diçe! Ayneyek çendan ji hesin be jî dema cîla lê were xistin, rûyê wê diberiqîne û ew sipehî dibe; têde şekl û sûret têne dîtin.*”

“*Ava dilê bajêr şîlo neke, tu yê li wir bibînî ku wa ye heyv û stêr lê digerin! Lewra însan, bi ava çem dişibihin; dema av şîlo bibe, êdî tu têde hîç tiştekî nabînî!.*”

❀

Wekî ku Hezretê Mewlana kerem kiriye gotiye, rûhê însanî, her wekî aveke berraq û sippî ye. Lêbelê dema rûhê însanî bi karên xirab û gunehan şîlo bibe, êdî wisan dibe ku têde tiştek nayê dîtin. Di vê rewşê de ji bo ew karibe durrên manewîyatê û nûrên heqîqetê bibîne, divê mirov wê avê zelal û safî bike. Ji lewma emanca tesewwufê ev e ku hestên xwedbînî û nefsanî terbîye bike, di encamê de jî ferd û civakan bi silh, selah, aramî û hizûrê bigihîne. Lewra Cenabê Heq, însan bi nezaket, ziravî, zarafet û kûrahîyên ulwî tezyîn kiriye. Esil qîmetê însanî bi qeder vê dibe ku wî ev mezîyet di alema qelbî ya xwe de çi qeder geş kirine û bipêşve birine. Ew qelbên ji rûhanîyetê tije, ji bo tezahura exlaqê xweş, amelê salih û halên manewî dibin mezher û xuyageh. Bendeyekî bi vî awayî, bûna wî ya wek îcaba di sûretê sipehîtirîn de “ehsenê teqwîm” de bi aferandin hatinê, bicih hatiye.

Li ser vî esasî însanek çi qeder di kufr, şirk û gunehan de bipêşve çûbe, bila ew qeder bipêşve çûbe, dîsa mirov nikare wî ji banga hîdayetê mehrûm û bêpar bihêle. Di esrê seadetê de yek ji mîsalên bêjimar ên vê rewşê jî wiha ye:

Wehşî bi qetilkirina Hemza’yê apê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ew şehîd kiribû û bînahîya çavan jî di teessureke kûr de ğerq kiribû. Lêbelê dîsa jî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- sehabîyek şande cem wî da ku wî ji bo îslamê bang bike. Wehşî jî di bersiva pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de jê re wiha gotibû:

“-Ya Mûhemmed! Dema te ev hukmê Xuda eşkere kiribe; ‘**ewê ku kesek kuştibe, yan şirîk ji Xuda re çêkiribe, yan jî zina kiribe, roja qiyametê dikeve ezabê du qat zêdekirî û di cehennemê de wek reben û biçûkxistî**

**ebedî dimîne**.'[449] Vêca tu çawa min ji bo îslamê bang dikî? Min ê ku ev xirabî hemû jî kirine. Wê li kuderê ji bo min rêya rizgarîyê hebe?"

Vêca Xudê Teala li ser vê bûyerê ev ayeta ha nazil kir, anî xwarê:

قُلْ يَا عِبَادِيَ الَّذِينَ أَسْرَفُوا عَلَى أَنْفُسِهِمْ لا تَقْنَطُوا مِنْ رَحْمَةِ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمِيعاً إِنَّهُ هُوَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ

"**Bibêje; Ellah dibêje: Gelî bendeyên min, yên ku li dijî xwe sînor derbas kirine! Hêviya xwe ji rahma Ellah nebirrin! Lewra Ellah li hemû gunehan dibûre. Bêşiwar her ew e, gunehbexş û dilovîn**."[450]

Di dawîyê de dilê Wehşî bi vê mizgînîya di vê ayetê de keyfxweş û şad bû û wiha got:

"-Xudayê min, rahma te çi qeder mezin e!" Wî bi vê gotina xwe tewba nesûha xwe îfade kir û digel hevalên xwe hat, misliman bû.

Wehşî'yê ku di Cenga Uhudê de Hezretê Hemza şehîd kiribû, êdî ew jî bûye Hezretê Wehşî -radîyellahû anhû-. Wî jî di nav çêja manewî ya hîdayet û meğfîretê de bi hêvîya ku karibe xwe bide efûkirin, wek xwîn û dîyet ji bo Hezretê Hemza, rabû hemû tehlûke dane ber çavên xwe û ew Museylemetul-Kezzab kuşt wî yê ku ji bo xwe îddîaya pêğembertîyê kiribû û bi vî awayî wî dawî li wê fitnê anî..

Dema sehabîyên li cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê pirs dikirin, jê re digotin;

"-Ya Resûlellah! Gelo ev ef û merhemet sade ji bo Wehşî tenê heye, yan jî ew ji bo temamê mislimana heye?" Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re digot:

"-*Na, ew ji bo temamê mislimana ye*."[451]

Naxwe ew dilên ku berê xwe didin ser tewba nesûh, wekî ku di vê rîwayetê de jî hate dîtin, bi maneya rast û kamil bi tesîrtirîn îfadeyên merhemet û mehebbetê ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hatine

449. Furqan, 25/68-69.
450. Zumer, 39/53.
451. Binêrin. Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, X, 214-215.

bihîstin. Terennumên ku tesellî, şîfa û keyfxweşîyê ji bo temamê cîhana însanîyetê dibexşin, ji lêvên mûbarek ên wî hatine sehkirin. Deryaya bêserî û bêbinî ya ef û keremê û sahilê wê ya hêvîyê dîsa bi kerema wê Nûra Hebûnê-hatiye dîtin. Digel hemû gunehên wan jî dîsa însan ji bo xatirê ava rûyê wî Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo xîtaba şefqetkarane ya îlahî ya bi awayê "**gelî bendeyên min!**" naîl bûye, gihaye.

Di zemanê me de cemîyeta me jî aynî wekî cemîyetên li rojava bi tesîrên menfî û neyênî yên materyalîst di nav qeyran û buhraneke manewî de maye, ji vê hêlê ve ji bo cemîyeta me jî fewqelade giring e ku em rahm û merhemeta Xudê Teala ji bo plana pêşî derînin û em însanan bi uslûbeke hêvîbexş ji bo Heq û heqîqetê bang bikin.. Ne ku em mirovan ber bi pevçûnên aqilî ve bikişkişînin. Lêbelê heke mirov însanan ji hêla hissî ve qezenc bike, rêyeke realîsttir û rastîbîntir e. Lewra gellek ji mirovan, li awayekî ji hêla aqilî ve şaş û çewt hatine siwarkirin û pêve girêdan. Ji lewma di pirranîya caran de bi "cedel û mûnaqeşê" îqnakirina wan û bidestxistina wan mûmkin nabe. Lewra pêşamadehî, ji bo qebûlkirina delîlên aqilî asteng û kelem e. Ji bo mirov karibe bike ku qelb ji heqîqetê ulfet bike, hez bike, pêşî divê mirov bi mûsamehayê ji însanan nêzîk bibe û hewl bide ku temayulên bilind ên di hundurê wî de bide geşkirin, wê ev metodeke bi bandortir bibe..

❀

Însanekî ku di hele, xeta, îsyan û gunehan de noq bûbe, berî mirov wî şermezar bike, yan wî aybdar bike, yan jî jê bixwaze ku ew ferman û wacîbatên dînî bîne cih, divê mirov rêza pêşîyê bide qezenckirina qelbê wî. Naxwe divê mirov hewl û xebat bike ji bo karibe pê re têkilîyeke bi mehebbet saz bike. Ev jî, ji bo nêzîkbûna mirovî ji wî û ji bo telqînên mirovî ji bo wî wê zemîn û jêrxana tesîrkirinê dabîn bike. Bi vî awayî, piştî dilê berpeyivî bi vê hazirîyê hat, hingê mirov dikare hêdî hêdî xetayên wî rast bike. Ji bilî vê jî divê mirov fêkîyê bi bereketê elaqeya gîyanî ya îkram û îltîfatên maddî û manewî yên ku wê di berpeyivî de şîyar bike jî li ber çavên xwe bigre. Di vê mijarê de Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo wan dilên ku di nav dû û dûxana gunehan de dikirin bifetisin, pencereke semawî vedikirin û ji nefes û hilmên taze îkram ji wan re pêşkêş dikirin. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vê xusûsê de wiha gotiye:

“*Şefaeta min, ji ummeta min bi awayekî taybetî ji bo wan mirovan e, ku gunehên mezin kiribin*.”[452] Divê mirov nezaket û tenikîya di vê hedîsa wî de jî fehm bike.

Hezretê Mewlana, vê helwest û îfadeya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li hemberî gunehkaran çi xweş îzah dike, dibêje:

“*Derman, ji bo çareserkirinê li kesên nexweş û birîndar digere. Derdek li kuderê hebe, derman diçe wir. Nizmahî û koncalek li kuderê hebe, av bi wir ve diherike*.”

“*Heke ava rahm û merhemetê ji te re pêwîst be, tu jî wiha bike!*”

Lêbelê ji bo tesîra derman û merhemê jî, îcab dike pêşî birîn ji mîkropan were xwerûkirin û bidûrxistin. Maneya vê jî ev e ku mûrşid dilên nexweş ji mîkropa gunehan paqij bike, yanî mûrşid dilê gunehkar bi ava tobê bişoyê. Derman, wate şefaet, di piştî vê de bicih tê.

Çawa ku Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa din de jî wiha gotiye:

“*Ewê ku (bi poşmanî) ji gunehên xwe tobe bike, dibe her wekî ku hîç guneh nekiribin*!”[453] Ev gotina pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji alîyekî ve mizgînî ye, ji alîyekî din ve jî merc û şertên vê mizgînîyê îfade dike ku ew bi xwe jî di mahîyeta tezahureke merhemetê de ye..

Di çarçoveya vê pîvan û endazê de çawa hemû pêğemberan tenikî û ziravîya bilinda di uslûba hîdayet û rahmê de li ber çavan girtine. Aynî wisan ew ewliyaullah ên ku li pey rêç û şopa wan çûne jî, ew tenikî û ziravîya bilinda di uslûba hîdayet û rahmê de bi hessasîyet li ber çavan girtine. Li ser vî esasî, fêkîyê pêşî yê îmanê wek merhemet hatiye wergiretin û teleqqî kirin û evdînî jî, bi kurtî di çarçoveya van herdu endazan de hatiye tarîfkirin:

- “Ta‘zîm lî-emrillah”, yanî bi îhtîram bicihanîna fermanên Xuda ye.

- “Şefqet li-xelqillah”, yanî ji bo xatirê aferînerê wan şefqet û merhemetkirina li aferîndeyên Xuda ye.

Rewşa dostek ji dostên Xuda Fudeyl bin Îyaz, ji bo dilê mûmînê ku bi van pîvanan dijî çi nimûneyeke ciwan e:

452. Ebûdawûd, Sunnet, 20.
453. Îbn-î Mace, Zuhd, 30.

Dema ew digirî, xelkê ew dîtibûn û jê re gotibûn:

“-Tu çima digrî?”

Wî jî ji wan re gotibû:

“-Ji ber ku ez li ser mislimanekî rebenê ku zulim li min kiriye, ğemgîn dibim, ez digrîm! Hemû kedera min, rezîbûna wî ya li qiyametê ye..”

Hezretê Mewlana di babeta îzahkirina mijarên ku van însanên kamil ji bo rahm û merhemeteke wiha diajon de wiha dibêje:

“*Dema deryayên rahmê têne coş û xuroşê, bi qesd bi ser de dirijin û ava jîyanê vedixwin. Mirîyê sedsalî ji gorna xwe dertê, sîmayên reş ên gîyan şeytan jî dibine ferîşteyên wisan ciwan ku horî çavnebarîyê ji wan dikin.*”

Li gorî hatiye guhastin; Hezretê Îbrahîm bin Edhem, devê bêhn-pîsê serxweşekî şûştiye û wî ji bo mirovên ku jê re gotine; te çima ev kiriye jî wiha gotiye:

“-Heke ez wî ziman û devê ku ji bo zikrê Xuda hatiye aferandin lewitî bihêlim, wê bibe bêhurmetî..”

Dema ew zilam bi xwe ve hatiye, jê re gotine;

“-Zahidê Xurasanê Îbrahîm bin Edhem devê te şûşt.”

Serxweş ji bo vê rewşê mehcûb bû, dilê wî şîyar bû û got:

“Naxwe min jî tobe kir..”

Hezretê Îbrahîm bin Edhem ê ku ji bo vê rewşê bûbû wesîle di xewna xwe de dîtibû ku li cem Heq jê re wiha hatiye gotin:

“**-Te ji bo me devê wî şûşt; me jî ji bo te dilê wî şûşt!**.”

❁

Cenabê Heq, ji bo Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û di kesayetîya wî de ji bo temamê ummeta wî di Qur’ana Pîroz de wiha dibêje:

“**Tu**, (tim û daîm) **rêya efûyê bigre û şîreta qencîyê bike**.”[454]

454. ‘Eraf, 7/199.

Hîç şubhe û guman nîn e ku di tetbîqkirina vê fermanê de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo me nimûneyeke ciwantirîn û mûkemmeltirîn e. Exlaqê xweş ê ku wî şanî daye û tezahurên ef û merhemetê bilindahî û alîcenabîyeke wisan pênegiha ye ku heta dilê melaîketan jî bibijîyê.. Ha ji te re yek ji wan:

Roja fetiha Mekkê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ef û emaneke gelemperî îlan kiribû. Mekke bi salan bû ji zulim û dijminahîyê pê ve tiştekî din nedîtibû. Mekke, wê rojê bi cejna lêborîn û efûyeke mezina ku hate şanîdan, tecellîyên mehebbet û merhemeteke bêtarîf dijîya. Lêbelê ji xelkê Mekkê mirovekî bi navê Fedale, wekî ku bixwaze sihê bîne ser vê sipehîtîyê û nehêle xelkê Mekkê keyfxweş bibe, bi qesda kuştina Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- xwe ji teniştên mûbarek ên wî nêzîk kir. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ferq xistibû wî û nîyeta wî, hîç ti telaş û hêrs şanî neda. Lêbelê dîsa wî perên xwe yên rahm û şefqetê jê re vekirin û bi sikûnet ji Fedale pirs kir, jê re got:

"-*Ma tu Fedale yî?*"

Fedale jê re got:

"-Erê!"

Piştre wî zatê Rahmeten lilalemîn (ji bo alemê wek rahm hatî şandin) wiha got:

"-*Ya Fedale! Ji wê tişta ku te di zêhnê de çêkiriye tobe û îstiğfar bike!*"û wî destên mûbarek ên xwe danîne ser singa Fedale.

Bi vî awayî di wê an û gavê de fikra kuştinê ji zêhnê Fedale çû, dilê wî bi nûra îmanê tije bû û ji nişka ve pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo wî bû hezkirîtirînê aferîndeyan.[455]

Hîç guman nîn e ku ev hal, bi vî awayî "**ewê ku ji bo kuştina te were, bila bi te sağ bibe!**" hatiye îfadekirin. Ew kemal û bizaveke alîcenabane ye ku tarîxa Îslamê bi mîsalên bêjimar ên wekî wê ku kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê, mişe û tije ye. Çawa ku di serî de Hezretê Ûmer û çendîn zatên wekî wî tên ku her yek ji wan ji bo vê uslûba ciwan bûne meyweyeke giranbiha. Hezretê Mewlana dibêje:

455. Îbn-î Hîşam, es-Sîre, IV, 46; Îbn-î Kesîr, es-Sîre, III, 583.

“*Di encama kemala rahma Xuda û pêl lê ketina deryaya kerema wî de li her devera hişk û şoravk baran dibare, her cihê bêav jî bi avê digihe!*”

“*Hey mirovê ku ji bo hîdayetê bang dike! Zanibe ku hem dermanê çav, çavê baş e! Çavê baş û awira sipehî, çavê xirab di bin lingê xwe de diperçiqîne, tine dike. Çavê çak û nêrîna pak; ji raserbûnîya rahma Xuda ya ji qehra wî ye. Ew ji rahmê peyda dibin. Çavê xirab jî, ji qehra wî ye, yanî ji lanetê tê. Naxwe ji ber ku nêrîna sipehî ji rahma Heq in, li dijî çavê xirab ğalib dibin. Ev hal, tecellîya beyana di hedîsa Qudsî: “Rahma min ji ğezeba min derbas bûye.”*[456] *de ye. Hem jî zanibe ku rahma Xuda, her dem ji qehra wî rasertir e. Bi vê nêrînê her pêğember li hemberî mirovên ku li ber wî rabûne, biserketiye*.”

“*Naxwe çareya birina belayê, ne sitem kirine, ne zulim kirine. Çareya wê efû kirine, bexişandine û kerem kirine. Bila îqaza nebewî: “Sedeqe belayê berbirr dikin”*[457] *te şîyar bike. Êdî usûla dermankirina nexweşî û belayan baş fehm bike!.*.”

“*Lêbelê wê jî jibîr neke ku efûkirina zaliman, zulimkirina li mezlûma ye! Rahmkirina li dizan û li her cure însanên xirab; lêdana li însanên lawaz e, merhemet nekirina li wan e!*.”

Divê mirov vê hevsengî û hevkêşîyê sipehî ayar bike. Lewra Xuda, “**Ğefûru’r-Rahîm**” e, yanî digel ku ew pirr efûkar û xwedî merhemet e jî; “**Ezîzun Zuntîqam**” e, yanî ew li hemberî însanên ku zebûnê zulim û neheqîyê ne, û li hemberî mirovên ku li dijî însanan û heq tixûbbuhêr bin jî tolveker û xwedî îzzet e.

Ji lewma pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa xwe de gotiye:

“-*Dema hûn du birayên xwe bibînin ku ew pevdiçin, arîkarîya zalimî jî û arîkarîya mezlûmî jî bikin*.” Dema sehabîyekî jê pirs kir;

“-Ya Resûlellah! Me mezlûm fehm kir. Lêbelê emê çawa arîkarîya zalimî bikin?” vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha bersiva wî daye:

“-*Ji bo wî jî bi awayê astengkirina zulima wî dibe*..”[458]

456. Buxarî, Tewhîd, 55.
457. Binêrin. Tirmizî, Zekat, 28; Suyûtî, el-Camiu’s-Seğîr, I, 108.
458. Buxarî, Îkrah, 7; Mûslim, Birr, 62.

Welhasil, ya ku em dixwazin bibêjin, ew e ku îro digel dinyayê her yek ji mirovên welatê me jî ji hêla îman û Îslamê ve wekî çûkekî birîndar e.. Divê mirov bi awayekî hessas û diqqetdar birînên wan bipêçe, ji bo vê jî zerûrî ye ku mirov bi merhemet û mehebbetê ji wan nêzîk bibe.. Ev jî keyfîyeteke wisa ye ku dikare bes di nav wê uslûb û naverokê de bicih were ku me ji jorê ve hewl dida wê vebêjin..

Divê mûsamehakarîya ji bo gunehkarî bi mûsamehakarîya ji bo gunehî wernegere; divê dijminahîya ji bo gunehî jî bi dijminahîya ji bo gunehkarî nepijiqe. Mûmînê di vê hest û pêhisê de be, divê di teblîğ û îrşadê de wek uslûb "berê mûaxezê (li xwe girtinê) bide alîyê xwe û berê mûsamehayê jî bide alîyê ğeyrê xwe."

## 2. HILM (HELÎMTÎ/BÊHNFEREHÎ) Û USLÛBA ŞEFQETÊ

Bi çavekî mûtesewwifane meyzandina li însanî, ji meyzandina li rewşa wî ya ku bi gunehan lewitîye zêdetir, îtîbar û îltîfatkirina ji bo esilê wî lazim dike. Ha hikmeteke kûra uslûba tesewwufî ku ne gunehî, lêbelê gunehkarî xweş dibîne û bi merhemet wî hemêz dike jî ev e. Mutesewwifekî rasteqîne, însanê gunehkar, wekî ku ew çûkekî perşikestî be, wisan wî wek heybereke ji bo şefqet û elaqê hewcedar teleqqî dike, werdigre. Teskînkirina gîyanê bi burhanê wî û ji nû ve bi sihhet û hizûrê gihandina wî bi endîşe di singa xwe de hiss dike. Lewra ew şefqet û mûsamehaya ku ji bo Xaliq dê ji mexlûqatan re were şanîdan, kartêker û mûessireke xurttirîn e ku mûmînan bi kemal û fezîletê digihîne.

Li gorî hatiye gotin; ji eshabê kîram Hezretê Ebûd-Derda li Şamê qazîtî dikir. Rojekê wî bihîst ku wa ye xelk çêran ji gunehkarekî re dikin û tiştek jê re nehiştine. Vêca wî ji wan pirs kir, ji wan re got:

"-Hûn çi dikin, wî wek zilamekî ku ketiye çalê, bibînin?"

Dema wan jî jê re got:

"-Emê ben jê re bavêjin û wî jê derînin." Vêca Hezretê Ebûd-Derda ji wan re got:

"-Naxwe peyvên giran jê re nebêjin, ji Xuda re hemdê bikin ku afîyet ji we re bexşandiye. Kar bikin ji bo hûn vî birayê we yê ku ketiye çalê, derînin."

Ew jê ecêbmayî man û jê re gotin:

“-Ma tu li hemberî vî gunehkarî hest bi dijminahîyê nakî?”

Ew Hezretê Ebûd-Derda’yê ku di terbîya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de gihabû, ev bersiva bi hikmet da wan:

“-Ez ne ji bo wî û kesayetîya wî, lêbelê ji bo gunehan dijmin im. Dema ew terka gunehî bike, dîsa ew ji bo min bira-dîn e.”[459]

Di vê mîsalê de gellek hikmetên kûr hene ku Hezretê Ebûd-Derda xwestiye wan di dilên mûmîn de bicih bike. Ev hikmet jî ew şewq û çîkên bilind in ku bi ferman û rizaya Cenabê Heq ji exlaqê bala’yê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- xwe di ummetê de şanî didin ku ev di tarîxa îslamê de tim û daîm wek destûreke kemalê ji bo sirûr û nûra hîdayetê hatine wergirtin û bi wesîlekirin û wan di axa amelên salih de kok û rayên xwe kûr berdane û bûne uslûb û rêbazeke lipeyçû..

Ev uslûb û rêbaz ew ğeyret û hewldan e ku gunehkarî di nav webal û gunehan de naxeniqîne. Lêbelê wî di keş û hewaya mûsameha, ef, merhemet û mehebbetê de di deryaya tobê de paqij dike. Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- heta ji mûşrikekî wekî Ebûcehl har jî bi ziravîyeke wiha nêzîk bûye, tûjik xistiye nav koncalên gunehên berpeyvê xwe, bi rezaletîyên wî ve lebikiye û ew sade û sade ji bo xilasîya îmanê û tertemîzbûnîya di deryaya seadetê de bang kiriye. Çawa Cenabê Heq jî wî kesê ku xwe bi îman û tobê ve asê girtibe, wan gunehên wî yên ku pêşî kirine xîç dike û her wekî ku ew guneh hîç nekiribin wisan pê re serdêrî û mûamele dike. Heta Cenabê Heq bi pîvana semîmîyeta bendeyê xwe wan gunehên wî tevan ji bo deftera sewabên wî diguhêze û di şûna gunehên wî de jê re xêr û sewaban dinivîse. Ev merhemet û gunehbexşîya Cenabê Heq di vê mijarê de çirayeke mezina hikmetê ye ku ji bo me rê şanî dide..

Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha ferman dike, dibêje:

“**Lêbelê ew kesê ku tobe kiribe, îman anîbe û amelekî salih kiribe, ha Xuda, wê xirabîyên** (gunehên) **wan ji wan re bi qencîyan** (sewaban) **biguherîne. Xuda gunehbexş û dilovan e**.”[460]

459. Binêrin. Ebdûrrezzaq, Mûsannef, XI, 180; Ebû Nûaym, Hîlye, I/225.
460. Furqan, 25/70.

Ew kesên ku para xwe ji vê merhemeta mezin û bala negirtine, ew hem ji bo xwe hem jî ji bo însanîyetê dijmin in. Ew ğafilên wiha ku nizanin ka şefqet û merhemet çi ye, ew reben û perîşan in ku rêyên nesîbên ebedî yên xwe dixitimînin.  Lêbelê ew dostên Heq, her wekî Mewlana û Yûnusan ku bi serkehnîya merhemetê gihane jî, her yek ji wan wekî guleke rûbinûr û rûkena cennetê ye, ew wek dostên mirovan jî ji terefê herkesî ve, heta ji terefê gur û çûkan ve jî wate ji terefê temamê kaînatê ve têne hezkirin.. Ew heta li ser strîyan jî sipehîtahîyê ji bo cîhanê belav dikin û dilên birîndar derman dikin. Ha ya giring jî ev e; mirov karibe bibe tebîat gul, wate mirov li vî bexçê dinyayê strîyan bibîne, mirov ji wan biêşe û bi strî nebe, çendan wekî zivistanê êş û jan jî bikevin navberê dîsa mirov karibe bi keş û hewaya biharê wan hemêz bike û karibe ji bo temamê alemê bibe gulek..

Hezretê Mewlana çi xweş dibêje:

"*Heyv ji ber ku ji şevê natirse, ji tarîtîyê jî nareve nûr wergirtiye, destpê kiriye ronahî pijiqandiye. Gul jî ji ber ku bi strî re xweş bûrandiye bêhna xweş qezenc kiriye*."

"*Vê heqîqetê ji gulê jî bibihîze. Binêre ew çi dibêje; ji ber ku ez bi strî re bûme çima bikevim ğeman, çima ez xwe bi dest kederê ve berdim? Ez a ku ji ber min pevrebûna bi strîyê xuy xirab re tehemmul kiriye, min ken bidest xistiye. Bi wesîleya wê ez bi wan derfetan gihame ku sipehîtîyan û bêhnên xweş li alemê belav bikim..*"

Hezretê Şêx Eşrefoğlû'yê Rûmî di malikeke xwe de uslûba zerûrî ji bo gihiştina vê rewşê, wiha xulase dike, dibêje:

Ji bo dost daqurpandina jehran wekî şekir lazim e!..

❀

Yek ji sehabîyan ji ber ku zehf zêde ceza û seza dabûne mûbtelayekî şerab û meyê, bêzar bûbûn û lanet lê anîbûn. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî ev yek bihîstibû û ji wan re wiha gotibû:

"*Lanetê li wî neyênin. Ez bi Xuda sûnd dixwim, heke di bara vî zilamî de tişteke ku ez zanibim hebe, ew jî hezkirina wî ya ji Xuda û pêğemberê wî ye*."[461]

461. Buxarî, Hudûd, 5.

Talebeyekî Hezretê merhûm Mehmûd Samî Remezanoğlû -quddîse sirruh-, bi sedem buhrana ku derbaskirî lawaz dikeve û di wezîyeteke serxweş de tê ber derîyê seydayê xwe. Ew kesê ku derî vedike, çi dema li erza wî dide û jê re dibêje:

“-Ev çi hal e! Xebera te jê heye ku tu hatî ber kîjan derîyî?” Ew zilamê bêhal û bêçare jê re dibêje:

“-Ma derîyekî din heye ku min bi merhemet hemêz bike û ez jî herim berê!..” û bêçaretîya xwe tîne zimên.

Samî Efendî li hundur tişta ku çêbûye dibihîze, derhal tê ber derî û ji wî talebeyê dil birîndarê xwe re dibêje; kerem bike, were hundur û wî dixe saraya canê xwe. Ew bi merhemet, şefqet û mehebbetê dilê wêrane yê wî sağ dike. Ew şexsê ku bi vê uslûba tenikîya dil ji bo îrşadê bûyî mezher jî ji hemû halên menfîyên xwe rizgar dibe, ew bi derbasbûna zemanî re di nav zumreya salihan de pişkdar dibe û dibe yek ji wan.

Exlaqê hemîde yê dostên Xuda ku dikarin bi nêrîna Xaliq bi şefqetê li mexlûqatên wî temaşe bikin, di vê hedîsa şerîfa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de çi xweş hatiye îfadekirin:

“*Ez bi wî Xudayî sûnd dixwim ku nefsa min di destê qudreta wî de ye, heta hûn rahmê li hev nekin, hûn naçin cennetê.*”

Dema eshabê kîram jê re gotin:

“-Ya Resûlellah! Em hemû bi merhemet in.” Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re gotiye:

“*Ew merhemeta ku (ez qesd dikim), ne ew merhemet e ku bi awayê hûn fehm dikin hûn sade merhemetê li hev dikin. Bi berevajî vê, ew merhemet e ku hemû mexlûqatan dide ber xwe, (erê) ew merhemet e ku hemû mexlûqatan dide ber xwe!..*” [462]

Însan, çi qeder ji ğaye û emanca esilîya xwe dûr bibe, bila dûr bibe, ew dîsa bi heysîyeta “însan”bûnîya xwe xwedî rûmet û şerefeke mezin e. Ew ji wan giranbiha û bilindahîyên di cewhera xwe de wek ğafil û bêxeber di teqana gunehan de asê maye, teqiniye. Aynî wekî Hecerul Eswedê ku bi dîwarê K‘abeya muezzam ve ye, vêca ew ji wir bikeve û di nava qirêjê de

462. Hakim, Mustedrek, IV, 185.

bimîne.. Hîç nayê tesewwirkirin ku wijdana ti mislimanî li hemberî vî halî bêqeyd bimîne û kêferatê neke. Di vê rewşê de jî mûmîn nikarin ji hurmet girtina ji Hecerul Eswed re biqerin û êdî ew rêz û hurmetê jê re negirin. Ewê derhal rajinê, wî ji nav toz û axê rakin, li ser halê wî hêstiran ji çavên xwe bibarînin, wî paqij û pak bikin û wê bi hev re pêşbirkê bikin ji bo wî dîsa li wî cihê îhtîram bilindê wî deynin. Ewê ji cennetê derhatina wî û bihayê bilindê di cewhera wî de bifikirin. Haleveku însan jî wekî Hecerul Eswed ji cennetê derhatiye. Naxwe ew bi sedem gunehên ku kirine çi qeder ketibe bila ketibe, ew bihayê di cewhera wî de baqî ye, mayende ye.

Li alîyê din hîç ti doktorê bi lîyaqet bi nexweşê xwe de nağeyide, jê re nabêje; "tu çima nexweş ketî." Çendan nexweşî bi sedem xeta û qusûrên wî derketibe holê jî dîsa doktor dê wê nexweşîyê wek encameke wiha şîrove bike ku nekarîna kirin û fikrên nexweşî bi xwe ew deranîye holê. Bi vî awayî, ew bi nexweşî de, ji ber wan xusûsên ku ji nexweşîya wî re bûne sersebeb, nağeyidin û li erza wî nadin. Lêbelê ew sade wan êş û azarên ku ew ji wan dike nalenal li ber çavan digrin, wext bi ser xwe de derbas nakin, wextê pûç zayî nakin û bi şefqet û merhemeteke mezin berê xwe didin ser tedawî û dermankirina wî.. Ew doktor xwe ji bo vê dermankirina wî mûkellef û binbar dibîne. Ha mûtesewwif jî di nav civakê de bi hissîyata wî doktorê ku li nav qawîşên nexweşxanê digere, dijî. Ew van hest û hissîyatan li ser bizav û tevgerên xwe jî bi serwer dike û ew ji bo kesên jirêderketî wekî kemera can xilaskirinê ye.

Dirêjkirina kemereke wiha can xilaskirinê û azadkirina însanekî ku ji hêla dînî ve gunehkar e, ji teqana gunehên ku ew di nav wan de teqiniye, wesîleya dilşadîyeke zehf bilind e.. Ev tenbiha ku Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di esnaya fetha Xeyberê de li meydana cengê bi xwe li Hezretê 'Elî kiriye, pirr balkêş e:

"-*Ya 'Elî! Bi wasîteya te, bi hîdayetê gihiştina kesekî, ji bo te, ji bûna bi xwedî ji bo hêştirên sor jî -ku ew bi qîmettirîn malên dinyayê ne- hê çêtir e.*"[463]

Ev heqîqet, di ayeteke pîroz de wiha hatiye îfadekirin:

وَمَنْ أَحْيَاهَا فَكَأَنَّمَا أَحْيَا النَّاسَ جَمِيعاً

463. Buxarî, Cîhad, 143.

“**Kî wî** (însanî) **sağ bike, dibe wekî ku wî hemû însan sağ kirine**..”[464]

Ev meseleya îmanê ye. Bêguman girantirîn hest û ramanên însanî di warê xeta û qusûran de kufr e. Hîç şubhe nîn e ku di wê xusûsê de şensê însanî heye, ew dikare ji kufrê jî xilas bibe. Ji ber ku bi uslûbeke nerm xilaskirina însanî ji kufrê bêhtir mûmkin e, dema Cenabê Heq Mûsa -eleyhisselam- şand ji bo îmanê lî Firewn telqîn bike, jê re teblîğ bike, ferman li wî kiribû ku ew bi «**qewlê leyyîn**» yanî bi peyva nerm pê re biaxive û wî ji bo îmanê bang bike.. Lewra serkeftina mirovê ku xelkê ji bo hîdayetê bang dike, wekî ku li jorê jî hatiye îfadekirin amelekî salih ê wisan giranbiha ye ku ew ji bo qezenca mezintirîn pir e. Ellah Teala -haşa- ji hişk û holatîya kufra ku Firewn li serê bû, ne bêagah û ğafil bû. Ji lewma mûxateb, çendan di dereceya kufrê de wekî Firewn dijwar be jî dîsa divê uslûba telqîn û dan hînkirina me, ne di şeklên rûqermiçîn û serveçûnên hissan de wekî tehdîdkirinê be. Lêbelê divê telqîna me di çarçoveya talîmata îlahî de be ku ew berê me dide ser weqarî û sergiranîya xebera xweş û peyva nerm..

Hezretê Mewlana çi xweş dibêje:

“*Peyva Xuda; «ya Mûsa! Li hemberî Firewn peyva nerm bibêje û li hemberî wî nermahîyê şanî bide!» baş fehm bike!*”

“*Lewra heke tu avê bi ser rûnê ku dikele de birijînî tu tifikê jî wêran dikî û beroşê jî wêran dikî..*”

Cenabê Heq di şexsîyeta Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- de ji bo temamê ummetê îfade kiriye û ev heqîqet di vê ayeta ha de eşkere kiriye, gotiye:

فَبِمَا رَحْمَةٍ مِنَ اللّٰهِ لِنْتَ لَهُمْ وَلَوْ كُنْتَ فَظًّا غَلِيظَ الْقَلْبِ
لَانْفَضُّوا مِنْ حَوْلِكَ فَاعْفُ عَنْهُمْ وَاسْتَغْفِرْ لَهُمْ

“(ya Resûlê min!) **Ew dem tu bi rahmeke ji Xuda ji wan re nerm bûyî! Heke tu kesekî dijwar û dilhişk bûbana, bêşiwar ew ji hawîrdora te belav dibûn û diçûn. Naxwe li wan bibûre û ji bo efûya wan dûa bike**..”[465]

464. Maîde, 5/32.
465. Alî Îmran, 3/159.

Ev uslûb sirf ne ji bo gunehkar û kafiran tenê lazim e. Lêbelê ew ji bo wan însanên ku di nuqteyên zirweyan de îslamê dijîn jî, li hemberî hinek lawazî û qusûrên ku dikare wek îcaba beşerbûnê were dîtin, lazim e. Lewra dema mirov hewl dide qusûr û xetayan çaksaz bike, heke mirov bi uslûbeke dijwar û gundîyane berpeyvê xwe biperçiqîne û wî rencîde bike, hingê ew berpeyvê mirovî bi xwe wê bi berevajî meqsûda mirovî çaksaz û îslah nebe.. Lêbelê ew dikare di îstîqameta tam berevajî de ji bo netîçe û ekamên xirab bibe sersebeb.. Lewra bi uslûbeke wiha hişk û gundîyane di wan îqazên ku werin kirin de însan, dikarin heta li hemberî dê-bavên xwe jî bêtehemmul bibin ku naxwe tehemmulkirina wan ji bo dîgeran helbet hê zor û zehmettir e. Ew rastî yên ku di rewşên wiha de têne gotinê jî bandora kêreke kuh û nebirr li ser dilan dikin; feyde û surdarîya xwe, şîrînî û cazîbeya xwe winda û berze dikin..

Hezretê Mewlana çi xweş dibêje:

“*Dema bavê te, ji ber qebaheteke te, te diêşîne, çendan ew bavê te ye jî lê dîsa ew di çavê te de wekî canewarekî êrîşkar û gezker tê dîtin.*”

“*Ev hal, bandoreke derdê te ye ku ew ji azar û cefaya wî tê. Yanî îqaza bavê te, digel ku ew ji bo başîya te ye jî lê ew azar û cefaya ku dide, wê merhemet û ğemxwarîya ji bo te di dilê wî de ji te re wek canewar şanî dide..*”

Ha divê ev psîkolojîya di însanî de neyê jibîrkirin û çi qeder ew di gunehan de noq bûbe bila noq bûbe, dîsa divê mirov ji têgihiştina ku ew heybereke giranbiha ye, hereket bike. Ji bo vê, Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîf de gotiye:

“*Ji însanî re wek guneh biçûkdîtina wî ya ji bo birayê wî yê misliman, bes e.*”[466]

Bezma-alem Walîde Sultana ku di hikmeta vê hedîsa şerîf gihabû, wê weqfek li Şamê damezirandibû ji bo sazkirin û tamîrkirina tiştên ku xizmetkaran şikandine. Bi vî awayî da ku şexsîyetên xizmetkaran neyên perçiqandin. Ev xizmeta wê, ji bo me ufûqeke fereha dilî şanî dide.

Mûmînekî ku di vê hest û şiûrê de be, divê wek uslûba teblîğ û îrşadê “**berê mûaxezê bide ser xwe û berê mûsamehayê jî bide ser ğeyrê xwe**.” Lewra Ellah Teala di ayeta pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

466. Mûslim, Birr, 32.

"**Lêgerînê li ser sûcên hev nekin; bila hinek ji we di nehazirîya hinekan ji we de ji hev xeber nedin** (gotegotê nekin); **ma bi kî ji we xweş e ku goştê birayê xwe bi mirîtî bixwe? Ew bi we xweş nayê** (ne wilo?).." [467]

Însanên îdeal û nimûneyî ku dikarin di îstîqameta van talîmatên îlahî de bijîn, bûne qehremanên mezin ên exlaq û fezîletê ku hîç ti zemanî dinyayê ji cebhe û enîya axret û uqbayê cuda mûtalea nakin. Yek ji sultanên dinyayê ku li ser rêç û şopa sultanên wiha yên maneyê diçin û reng dane tarîxê jî Hezretê Şêx Edebalî ye ku ew hîmayetkarê manewî yê Osman Ğazî ye. Ji terefê Hezretê Şêx Edebalî ve ji Osman Ğazî re û di şexsê wî de jî ji bo hemû zilamên dewletê yên ku hê werin nesîhet û şîret hatine kirin. Ev şîret û nesîhet ji bo hemû zilamên dewletê ye; ji ferdên malbatê destpê kiriye, ji qedemeyên jêrtirîn ên fermanberên dewletê bigre, heta dor bigihîje ser fermanberên di qedemeyên bilindtirîn de. Ev wesîyetên ku ji bo her îdareçî û rêvebirî hatine kirin, çi qeder kûr û manedar în:

"*Hey kur! Bizane! Ji vê û pêde bila hêrs ji me re be; bila sernermî ji te re be... Bila dilman ji me re be; bila dil xweşkirin ji te re be.. Bila sûcdarkirin ji me re be; bila tehemmulkirin ji te re be.. Bila nekarîn, şaş kirin ji me re be; bila dil wergirtin ji te re be.. Bila nebûrandin, pevçûn, neahengdarî û lihevnekirin ji me re bin; bila edalet ji te re be.. Bila çavê xirab, devê bêoğir, şîroveya neheqdar ji me re be; bila efûkirin jî ji te re be..*"

"*Hey kur! Ji vê û bi şûn de bila dabeşkirin ji me be; bila bi tev-kirin ji te re be.. Bila tenbelî ji me be; bila şîyarkirin, biğeyretkirin û şekildarkirin ji te re be..*"

Ev şîret û nesîhetên bêhempa, tezahureke zengînîya dil û fezîleteke ulwî ne, ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wan. Ew ji şexsê wî re wiha dibêje; heke însan li hemberî te xeta û qusûran bikin jî dîsa tu wan ji bo Xuda efû bike. Çi dibe, bila bibe dîsa tu bi terzê şefqet, merhemet û mehebbetê li bendeyên Xuda binêre.

Çawa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di nav civakekê de heke sûcker dizanî jî dîsa ji bo wî rencîde neke -adeta- ew bi nenas dikir û hemû civak ji wê xeta û qusûrê dida dûrkirin. Carina jî wî bi qesd dixwest bi mûxateban bide hisskirin ku ew wê xetayê ji wan re layiq nabîne, wî ji wan re wiha digot:

467. Hucûrat, 49/12.

“-*Çi li min qewimîye ku ez we wiha dibînim.*”[468] Adeta ğeleta ru’yetê (şaş dîtinê) dixist alîyê wan bi xwe.

Ha ev uslûba nedana şermê ya xetamendî û biçûk nexistina wî, wesfeke hevbeş û mûştereka wan kesan e ku tesewwufê rast fehm dikin û wê dijîn. Lewra rêya Xuda, ne dil şikandin e, lêbelê dil çêkirin e. Yûnus Emre çi xweş gotiye:

*Dil textê Xuda ye,*
*Xuda li dil nêrîye.*
*Bedbextê herdu cîhanan,*
*Kî ye, ewê dil wêran kiriye!*

Bi rastî gellek ji wan kesên ku ji ber xeta û qusûrên xwe hatine şermezarkirin, ji civakê hatine bidûrkirin û hatine biçûkdîtin, karîne bi bereketa vê uslûb û vê têgihiştinê dubare werin, bikevin nav keş û hewaya rahmê.

❁

Li gorî hatiye guhastin û ragihandin; talebeyekî Hezretê Cuneydê Beğdadî hebû. Rojekê Hezret ew di rewşekê de girtibû ku qusûr û lekeyan bîne ser wî. Talebe ji vê rewşê ğayet mehcûb û şermende bûbû, ji wir cuda bûbû, çûbû û careke din ew nehatibû dergehê wî. Piştî maweyek û mûddetek bi ser de bûrî, ev talebe xanîyê dilê wî wêran bûbû. Cuneydê Beğdadî bi hevalên xwe yên sohbetê re di çarçîyê re derbas dibû, çavê wî bi vî talebeyê wî ket. Talebeyê wî jî haya wî ji xwaceyê wî çêbû, lê bi sedem şermîya xwe bilezûbez ji wir bidûrket û çû. Cuneyd -quddîse sirruh- hest bi vê rewşê kir, li hevalên xwe yên sohbetê vegerîya û ji wan re got:

“-Hûn herin, çûkekî min ji hêlîna min firîye!” û ew li pey rêça talebeyê xwe çû. Talebe li pişt xwe fetilî û meyzand, dema wî dît ku wa ye xwaceyê wî li pey wî tê, wî taqîb dike, hê bêhtir heyecanê ew girt û wî gavên xwe siviktir kirin. Ew çû û çû heta kete kolaneke nebûr. Bi telaşa ku mehcûbîyeta wî didayê, wî bi ğeyrê îxtîyarî serê xwe li dîwarî xist. Dema wî seydayê xwe li pêşberî xwe jî hazir dît, ew ji rengekî kete rengekî din û serê xwe di ber xwe de tewand. Cuneyd -quddîse sirruh- jê re got:

“-Ewladê min! Tu bi ku ve diçî, tu ji ber kê direvî? Arîkarî û himmeta seydayekî ji bo talebeyê wî esil di rojên wiha zor û zemanên wiha tevlîhev de

468. Buxarî, Menaqib, 25; Mûslim, Selat, 119.

çêdibe.” Cuneyd -quddîse sirruh- bi şefqet û merhemet rahişte wî û ew bi xwe re anî dergehê xwe. Talebeyê wî xwe avête ber lingên seydayê xwe, ji kirina xwe poşman bû û tobe kir.

Ha ev hal, kemala însanî ye, yek ji encamên bi bereketên wê di îrşada manewî de ev e ku însanek çi qeder xetamend û qusûrdar dibe bila bibe, dîsa mirov karibe wî red neke û bi şefqet û merhemeta bavekî ji wî nêzîk bibe, dîsa wî hemêz bike.

Li alîyê din divê yek ji elametên farîqe û cudakerê mislimanê kamil ev be ku ew ji efûkirina xeta û qusûran biwêdetir jî karibe li hemberî xirabîyê bi qencî serdêrî û mûamele bike û heta mirov karibe wî însanê ku xeta û xirabîya wî dibîne jî dîsa ji bo îslah û hîdayeta wî dûa û lavlavan ji Xuda bike. Ji bo vî wesfî ev serdêrî û mûamelekirina Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- mîsaleke kafî û bes e; dema Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- çû Taîfê, hinek mirovan bi keviran li wî didan û bi dûv wî diketin. Lêbelê wî nifir û bêdûayî li wan nekirin û ji bo hîdayeta wan dûa kirin.. Dîsa ji bo parastina îzzeta dînê ku wî anîbû li Mekkehê, wî ji bo bi qehr û ğezeba îlahî helakbûna mirovan bêdûayî û nifir li wan nekirin. Lêbelê wî dûa kirin ji bo her yek ji wan bikeve daîreya hîdayetê. Ev uslûba wî, ji bo rizgarî û xilasîya çendîn bedkar û haran bûye wesîle, bûye navgîn.

Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîf de ferman dike, wiha dibêje:

“*Ji bo we ne mezîyet e ku kî qencîyê li we bike hûn jî qencîyê lê bikin û kî xirabîyê li we bike hûn jî xirabîyê lê bikin. Esil mezîyet, kî xirabîyê li we bike hûn bi heman awayî hemberê wî nedin û hûn karibin qencîyê (li wî) bikin.*”[469]

Lewra ew kesê ku qencî li wî hatiye kirin heke dijmin be dibe dost; heke ew di navberê de be nêzîk dibe; heke nêzîk be jî hezkirina wî zêdetir dibe. Îro li dinyayê însanan xwe bi ber kartêkerî û otorîteya bêmerhemeta materyalîzmê ve berdane û ew bi ber qeyran û buhraneke mezin ve hatine kişkişandin. Hikmeta ku ji bo rehetkirina rûhî û gîyanî ya xwe bi zehftir ji bo teleqqî û wergirtinên mîstîk reğbet dikin jî ev e. Bikaranîna uslûb û rêbaza tesewwufî di teqdîmkirin û dan wergirtina Îslamê de ji vê hêlê ve serkeftîtir e.. Îro li rojava, pirranîya zumreya bijardeyan ku bi hîdayetê digihin, ji bo tetmînkirina valahîya di gîyanê xwe de serî li eser û berhemên mûtesewwifên

469. Tirmizî, Birr, 63.

mezin ên wekî Hezretê Mewlana û Îbn-î Erebî didin. Dîsa li alema rojava di serê berhemên îslamî yên di rewacê de jî berhemên tesewwufî tên. Bi vê sedemê, di roja îroyîna me de zehf zêde îhtîyaca hemû alema însanîyetê bi ferehîya qelbî ya Hezretê Mewlana heye ku ew dibêje:

*“Were! Were! Tu çi dibî bibe, dîsa were!*
*Heke tu kafir, mecûsî yan jî pûtperest bî jî were!*
*Dergehê me (ku Îslam e) ne dergehê bêumîdîyê ye.*
*Heke te sed caran toba xwe xirab kiribe, dîsa jî were!*”

Ğaye û emanc di vê banga mûsamehakara Hezretê Mewlana de ev e ku însanî bi cewhera rasteqîneya wî re dide naskirin, wî di zemîna feyzdara şefqet û mûsamehayê de ji xetayên wî rizgar dike û bi Îslamê şerefdar dike. Heke na, ne ew qebûlkirina bêğaye û bêemanc e ku her kes li ser çi halî be wî li ser wî halê wî bihêle û wilo qebûl bike. Meqsûd ji wê qebûlkirinê çaksazkirin û sererastkirina alema hundurîna wî ye. Ji tamîrkarî re xirabûnîya aletî dixuyê. Dergehên dilî yên zatên wiha jî dişibihin tamîrxaneyekê ku ew karê li wir hatiye kirin, ji bo rastkirina şaşîyan e. Naxwe ğayet xwezayî û siriştî ye ku bi zehftir berê axaftina bangê li însanên xetamend be.

❀

Di zemanên ku jîyana dînî zehf zêde lawaz bûbe û li gorî pîvanên dînî însan pirr bi qusûr bûbin de bi mûxatebê xwe re bi taybetî bi dîgerğemî, merhemet û mûsamehayeke tesewwufî mûamelekirin pêwîst e.. Lewra ev bizav; bi berekettirîn helwest e ku kesên wekî van ku ji her alî ve ketine ber guneh, fitne û îsyanê çaksaz û rast bike û îhtîmala rizgarbûnîya wan zêdetir dike..

Lêbelê divê were îfadekirin ku mûsamehaya li hemberî gunehkarî di babetên takekesî û ferdî de ye. Heke na, ew qusûr û zulim xweş nayêne dîtin û bi ef û mûsamehayê meyzandina li wan nayê teswîbkirin û rast dîtin ku ew di mahîyetekê de bin ku mafê mirovan û heqê evdî binpê dikin, zirara wan digihe cemîyetê û hizûr û seadeta civakê perîşan dikin.. Ji bilî vê jî ew kesên ku di naveroka pîvanên sethî û seresereyî yên dînî de dijîn, bi hesta “hêrs” û ğezebê meyzandina wan li gunehkaran bêguman hîç jî ne çewt û şaş e.. Ji bo wan dûr rawestina ji gunehkaran, ji bo parastina qelb ji zirarên ku wê ji ulfet û hezkirina wan, bizên, zerûrî ye. Lewra di kesên ku heyata xwe ğafilane dijîn de guneh, wekî mûzîkeke şîrîn ji nefsan re xweş tê, adeta ji wan re giranbarîya gunehan nayê hisskirin û ew wisan bi rehetî karin gunehan bikin. Bi vê sedemê xweş dîtina gunehên gunehkaran ji bo gelemperîya mirovên

ewam tehlûkedar e: Lewra hem ew dibe sersebeb ku mirov endaz û pîvanên îlahî xefîf û sivik wergire. Hem jî ew dibe sersebeb ku qelbê mirovî jî bikeve nav wan gunehan. Wate divê mirov mûsamehaya xwe ji bo gunehkarî neke mûsamehaya ji bo gunehan; divê mirov dijminahîya xwe ya ji bo gunehan jî neke dijminahîya ji bo gunehkaran.

Di piştî van tevan de divê xeber û peyva me ev hedîsa şerîf be:

“*Hêsan bikin, zor nekin! Keyfxweş bikin, nedin nefretkirin!*..” [470]

Tabîî, bi şert û mercê ku mirov zirarê negihîne cewhera dîn û ji îstîqametê jî cuda nebe..

**Ya Rebbî! Me bike ji ehlên îşqa rastî ku dilên wan bi hikmetan tije ye û me ji bo sirrên herdu cîhanan aşna û çavnas bike! Qelbên me bike serkehnîya merhemet, şefqet û hemîyeta li mexlûqatan ya ji bo xatirê Xaliqê wan! Guneh û qusûrên me bi sewab û sipehîtîyan biguherîne, tebdîl bike!**

**Ya Rebbî! Me bigihîne wê zumreya salihan ku rêberên hîdayetê ne, ewên ku di çarçoveya sirra «Rahma min ji ğezeba min derbas bûye.» de tevdigerin û tim û daîm rêya efûyê esas digrin!**

**Amîn...**

470. Buxarî, Îlm, 11.

# BEŞA SÊYEM

# Marîfetullah
# û
# Mewhîbeyên Îlahî

**A- MARÎFETULLAH**

1- Zatê Ulûhîyetê
2- Sifetên Îlahîyye û Tecellîyên wî
3- Marîfetullah û Tecellîyên di Arifan de

**B- MEWHÎBEYÊN ÎLAHÎ**

1- Îlmê Ledunnî
2- Fîraset
3- Teserruf-Keramet
4- Ruyayên Sadiq




***"Kî xwe nas bike, bêşiwar wî Xudayê xwe jî nas kiriye."***

# MARÎFETULLAH û MEWHÎBEYÊN ÎLAHÎ

**Cenabê Xuda ew qeder zahir e ku adeta ji ber zehf zêde zahirîya wî ğaib e.**

## A. MARÎFETULLAH

### 1. ZATÊ ULÛHÎYETÊ

Ev beyan û daxuyanîya Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-:

“*Li ser mexlûqatên Xuda tefekkur bikin, lêbelê li ser Zatê wî nefikrin. Lewra hûn bi ti awayan nikarin qedrê wî (bi awayê ji wî re layiq be) teqdîr bikin..*”[471] îfade dike ku fehmkirina mahîyeta Zatê Cenabê Heq Teala hîç ne mûmkin e.

Ji xwe agahî û malûmat di bara wî Xuda’yî de ku ew îdraka beşer dibe keş û hewaya îman û îrfanê û bi nûra hîdayetê digihîne jî, ne di bara mahîyeta Zatê wî de ne. Lêbelê ew di bara sifetên wî de ne. Lewra Xudê Teala, ji zeman û mekanî mûnezzeh e. Îdraka însanî jî ji ber ku pêşamadehî bi zeman û mekanî re kiriye, mentiqa wî, bes bi întîbaayên ku ji alema maddî werdigre, faîlîyetê şanî dide. Ji bo fehmkirina tiştekî jî lazim e ku di alema tê dîtin de tiştekî wekî wî tiştî hebe û di zêhn de jî întîbaayeke vê hebe. Herçî Xuda ye, ew bi sifetê xwe neşibihîna bi ti mexlûqatekî xwe (mûxalefetun lî’l-hewadîs) sifetdar e. Ev sifetê wî jî vê rastîyê îfade dike; ew naşibihe hîç tiştekî ku piştre hatiye meydanê û ew bi awayekî mûtleq ji mexlûqatan ferqdar, çêtir û mûkemmel e. Ev rastîya mentiqî, ekam û netîceya fehmkirina mûkemmelîyeta nîzama li kaînatê hakim û serwer e. Sebeba pêşî di şîyan û qudreta aferandina alemeke wiha de, yanî Hezretê Xaliq Teala -haşa- bi ti awayan bi eser û berhemên xwe re nayê mûqayesekirin. Ew di ser hemû mexlûqat û aferîndeyan de xwedî kemalek, ezametek û qudretekê ye. Lazimîya wiha bûnîyê jî zerûreteke aqilî

471. Deylemî, Musned, II, 56; Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, I, 81.

û mentiqî ye. Li ser vî esasî fikr gerandin di bara mahîyeta Zatê Xuda de ku hemta, heval, nezîr û wekê wî nîn in, ji bo beşer hem ne mûmkin e, hem jî ne rast û ne durust e.

Wate mûkellefîyeta me di bara Xudê Teala de ev e ku em ji sifetên wî derkevin ser rê û îdrak û qebûl bikin ku Zatê wî heye. Ji lewma ew îzahat û mîsalên ku Cenabê Heq bi xwe di Qur'ana Pîroz de di bara xwe de ji me re pêşkêş kirine jî li gorî vê mahîyetê ne. Cenabê Heq di ayeta pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

"**Ellah ronahiya erd û asîmanan e. Nimûneya ronahiya wî, dişibihe hêlîna kulekekê ku çira** (ronahîya ku dişewite) **têde heye. Ew çira jî di nava cameka fanûsê de ye; ew cama fanûsê jî her wekî stêreke ronak e ku ji dareke pîroz, zeytûnekê ye ku ne rojhilat e, ne jî rojava ye, ji zeyta wê darê tê vêxistin. Ji xwe nêz e ku heke agir negire wê jî ronahî dide. Nûr e, li ser nûrê ye! Ellah kê bivê wî tîne ber nûra xwe. Ellah her wiha ji mirovan re nimûneyan eşkere dike** (da ku ew fehm bikin û zanibin). **Hemin Ellah bi her tiştê zana ye**." [472]

Heke mirov bala xwe bide serê, îdraka beşerî pêşî bi întîbaayên ku karibe fehm bike tê stranê, paşê jî bi heqîqeteke ji xeyal û îdrakê biwêdetir wê ji wan întîbaayan tecrîd dike û bi îfadeya cewherî tê gotin "**nûra li ser nûrê**." Yanî nûra wî wekî ku dibe ji temsîlê were fehmkirin jî ne ji çend nûrên sînordar e, ne yeka tenê ye yan jî ne temam e. Lêbelê wek bêsînor ew di ser her nûrê de ye. Ew nûrek e ku sînordarkirina wê û hatin zanîna wê ne mûmkin e. Lêbelê herkes delîla heq nabîne, ayet û berateyên heq nizane û bi xwestina heqq nagihe.. Lewra îdrakkirina tişta ku tê dîtin, bi qeder ku bi nûrê ve bend e, bi hebûna çavê ku bibîne ve jî bend e. Lewra her tiştê ku mûsaîd be bi çavan were dîtin, bi bereketa nûrê ji bo herkesê ku çavê wî hebe eşkere dibe. Lêbelê ew ji bo nebînan hîç nayê dîtin. Naxwe bi qeder nûra ku hebûn û heqîqetê şanî dide, bûna wê di rûhekî ku dibîne de, ji bo mûşahedê ruknekî jêneger e. Lewra bes rûhê ku dibîne, îdrakker û fehmker e.

Li alîyê din, di ayeta pîroz de xwe wesifandina Cenabê Heq bi «Nûr»ê û gotina wî «Xuda nûra asîmanan û erdê ye.» îfadeyeke vê ye ku ew bi xwe ye, ew hebûna ku hemû alem aferandiye, ew kaînata fereh şanî daye, heqîqetên bêjimar ên veşartî-eşkere dane zanîn û çav û dil geş kirine.. Lewra heke ew

472. Nûr, 24/35.

nûra mezina Cenabê Heq nebûya, hîç tiştek nedihate zanîn, peyda nedibû; hîç ti heqîqetek nedihate hisskirin û hîç ti keyfekê dil tije nedikir.

Di vê meyanê de hemû nûrên ku di tezahur û mûşahedeya heyberan de tekane mûessir e, ji tecellîyeke wê nûra mezin îbaret û birrîtî ye. Ji lewma ji bo dereceyên nûrên li asîmanan, mîsaleke wan li alema dinyayê jî heye. Mesela tîrêjên taverojê, dema li heyvê bikevin, ji wir jî bikevin xanîyekî li sererdê û li ayneyeke di dîwar de bikevin, piştre ji vê jî li ayneyeke dîgera di dîwar de bikevin, paşê ji wir li taseke tije av bikevin, paştir jî ji vir jî di banê malê de xuya bibin, xurttirîna van, serkehnîya pêşîn nûra di taverojê de ye, wek ya duduyan nûra di heyvê de ye, wek ya sêyem nûra di ayneya yekê de ye, wek ya çarem nûra di ayneya duyem de ye, wek ya pêncem nûra di avê de ye, wek ya şeşem jî nûra di banî de ye.. Û di tevan de ya ji nuqteya cihê derketina pêşîn nêzîk, ji ya ji wê dûr hê xurttir e. Hatin bi derecebûnîya nûrên dîger ên li asîmanan jî aynî wekî vê ne. Yanî ew nûra ku tê îstîfadekirin, ji yê ku îstîfade dike hê xurttir e. Û ev nûr hemû jî her zêdetir dibin û xurttir dibin di nûra mezintirîn û dawîn de bi dawî dibin ku ev jî nûra Xudê Teala ye.

Wate bi holê derketina her tiştî û hatin zanîna wî, bes bi holê deranîn û dane zanîna Xudê Teala ye ku ew bi nûrkerê asîmanan û erdê ye. Lewra bê bûna nûra wî, bi holê derketina hebûnê û hatin dîtina wê, ne mûmkin e. Lêbelê ew însanê ku di ronahîya naverojê de li keskahîya biharê dimeyzîne, ew li hemberî curecur rengên ku ji çavê wî re têne dîtin, dibêje:

“-Min ji keskahîyê pê ve tiştekî din nedît!” ew di biharê û keskahîya wê de noq dibe û ew ferqê naxe wê ronahîya ku di rastîyê de dîtina wan jê re dabîn dike. Haleveku ew hemû rengên ku wî dîtine, wî ew bi saya ronahîyê îdrak kirine. Di vê rewşê de ronahî, di esilê xwe de ji zehf zêde eşkere-bûnîya xwe, veşartî maye.

Bi hereket kirina ji vê rastîyê erbabê marîfetê wiha dibêjin:

“Cenabê Xuda, di rastîyê de ne ğaîb û nihan e. Lêbelê ji hêla îstîdada beşerî û îdraka me ve ji ber zehf zêde zahirîya wî, ew ğaîb û nihan e.”

Hezretê Hudayî dibêje:

Zihûra wî li ber zihûrê hatiye perdekirin

Ma ewê ku çavê wî hebe ji bo nûrê delîlê dixwaze?

Bi tabîreke din, heke di odeyekê de ronahîyeke pênc hezar voltî pêbikeve, îstîdada di çavê însanî de nikare hîç tişteke di bin vê ronahîyê re, bibîne. Dema rewş ev e, naxwe ew Xudê Teala yê ku ji ronahîya bi mîlyonan voltî jî di mahîyeta bêdawîyê de ye û xwedî nûreke çêtir e, helbet ew ji hêla îdraka beşerî ve ğaîbek e. Cenabê Heq, ji bo îfadekirina vê nukteya hûr di Qur'ana Pîroz de di bara mûmînan de wiha gotiye:

“**Ew in ku îmanê bi ğeybê tînin**..” [473]

Lêbelê ji bo ehlê besîretê ev ğeybeke wisan e ku bi zehf zêde tecellîya nûra wî ji heyberên dîyartirîn jî hê zahirtir e. Ew jî wiha çêdibe: Em bi hewayê dijîn, lêbelê digel ku wê hawîrdora me girtiye jî dîsa em wê nabînin. Sade bi awayê teneffuskirina wê, em wê hiss dikin. Di nava vê de digel ku em wê nabînin jî lêbelê tu ji înkarkirina wê neke behs, em bi zerûreteke jîyanî dibêjin:

“Heke hewa nebe, em neşên bijîn!”

Candarên di avê de jî wekî me ne. Ew jî di nav deryayê de ferqê naxin avê. Haleveku avê, ji çar alîyan ve ew dorpêç kirine.

Maneya vê; heke heyberek li pêşberî me, li rexê rastê me, li rexê çepê me, yan jî li alîyên din bibe, îdraka me dikare wê fehm bike. Lêbelê dema ew her terefên me dorpêç bike, ew ji girêdan û qeydên hemû cîhetan tê selixîn û xuyabûna hebûna wê, derdikeve ser îdraka me; ew ji bo çavên me yên ku bi alîyên wiha ve girêdayî ne, veşartî dimîne. Heke ev wiha nebûya jî, mesela heke hewa ji çavan re eşkere bûya, jîyan dibû ku neyê jîyîn. Lewra di hewayeke bi mij û moran de dibû ku temamê heyberên din neyên dîtin. Yanî hatin dîtina heybereke ku ji her terefan ve em dorpêç kirine, ji bo hatin dîtina heyberên din sebeb e. Ji lewma Cenabê Heq di vê alemê de ji çavan re veşartî maye. Heke ew ji çavan re zahir bûya, însanan hem ji ber sipehîtîya cemala wî, hem jî ji ber ku wî ew ji hawîrdoran ve dorpêç kirine, hîç tiştekî din nedidîtin û tabîî ew dem bi navê jîyana dinyayê tiştek nedibû.

Naxwe mûteal, Cenabê Heq ê ku heyberekî ji xeyal û îdrakê biwêdetir e, hem yê veşartîtirîn e, hem jî yê eşkeretirîn e. Ya rast, ew wek zat veşartî ye, ew wek tecellî jî eşkere ye.

Eşkere ye; lewra hemû heyber, ji nûra Zatê Wî peyda dibin.

473. Beqere, 2/3.

Veşartî ye; lewra hêza çavan ji bo meyzandina li nûra Wî têrê nake..

Eşkere ye; ji bilî wî çi hebe, bes bi sifetên Wî tecellî dike, xuya dibe.

Veşartî ye; ji ber ku heval û hemtayên wî nîn in.. Lewra zanîna însanî, bi umûmîyet tiştê bi dijberê wê dide naskirin. Bi vê sedemê naxwe ewê ku hîç dijberê wî nebe û bi ti awayan naguhere, ğayet tabîî ye ku veşartî bimîne.

Di babeta îdraka hebûneke wiha de ji navbera mexlûqatan hîç ti hebûneke xwedî şiûr, helbet ne xwedî şîyan û qabilîyeteke kafî û têrker e. Bi vê sedemê ye ku îman, ne waqifbûna ji heqîqeta Zatê wî ye, lê ew ji qebûlkirina hebûna wî îbaret e. Lewra keyfîyeta hebûn û nebûnê cuda ye, hukmê di bara mahîyeta tiştekî heyî de jî tiştekî din e..

Bi vê nêrînê Cenabê Heq, sade ji bo keyfîyeta hebûn û nebûna Zatê ulûhîyeta wî fehm bike, însan bi nîmeta aqil techîz kiriye. Ji bilî vê jî alema ku dikare were mûşahedekirin jî bi tecellîyên sifetê xwe tije kiriye, bi wan re derfet û îmkana ji eserê çûn û guhastina ji bo mûessirî pêşkêş kiriye. Mîsala li jêrê vê rastîyê çi xweş dide xuyakirin:

Ji ewlîyaullah ên mezin Hezretê Cuneydê Beğdadî, rojekê dît ku wa ye gellek mirov di navbera telaş û meraqê de ber bi cihekî ve baz didin. Wî ji wan pirs kir, ji wan re got:

“-Hûn wiha bi telaş û heyecan bi ku ve diçin?”

Wan jî jê re got:

“-Ji filan deverê alimek hatiye! Xebero, ew hebûn û yekbûna Xudê Teala bi hezar û yek delîlan îzah dike! Em diçin ji bo ji van delîl û îzahatên wî îstîfade bikin. Heke tu bixwazî, tu jî kerem bike, were!”

Vêca Hezretê Cuneyd bi bevkenîyeke ğemgînane li wan meyzand û ji wan re wiha got:

“-Ji bo çavên ku dibînin, guhên ku dibihîzin û qelbên ku hiss dikin li kaînatê bêjimar terennumên şehadeta îlahî û delîl hene. Çendîn şehadetên Cenabê Heq bi xwe jî di bara wî de hene. Hey ehalî! Digel van tevan jî heke şubheya ti kesî hebe, bila kerem bike, here! Di dilê me de girika gumanê (şubhê) jî nîn e.”

Bi kurtî ji bo çavên ku dibînin, Cenabê Heq, di însanî de ku ew cewhera alemê ye, di kaînatê de ku ew Qur’aneke bi zargotin e, û di Qur’anê de ku

ew jî kaînateke bi zargotin e, bêjimar tecellîyên sifetê îlahî bexşandine. Ji bilî vê jî di babeta îstîfadekirina ji van delîlan de jî wek arîkar û rêber pêğember şandine. Wî bi wasîteya pêğemberan jî heqîqetên alemên ku têne dîtin û yên ku nayêne dîtin jî, bi pîvaneke dîyarkirî aynî wekî ku di Qur'ana Pîroz de tê mûşahedekirin bi awayekî ji îdraka beşerî re guncaw û ahengdar di sûretê "kelam"î de lutf kirine.

Ji lewma di nav îmkanên kelamî de di bara Xuda de em dikarin bi kurtî van bibêjin:

Di heqîqetê de heyberê mûtleq, bi ti qeydekê nayê qeydkirin; ji derveyî xwe wesifandina Wî bi xwe ew hîç bi ti sifetekî din nayê tewsîfkirin. Heta bi îdraka me ya sînordar ku em jê re dibêjin; "mûtleq" jî dibe ku ew wî bi qeyd û bend dike; lêbelê ji bo mirov karibe vebêje, wiha gotin lazim dike. Heke na, çi were bîra însanî bila were, Xuda her ne ew e.

Îzharkirina sifetên xwe ya Heyberê Mûtleq ê wiha subhan jî îcabeke Zatê wî ye. Aynî wekî ku qendîleke geş jî ronahîyên xwe dide xuyakirin.. Hemû heyber, bi zanîna Hebûna Mûtleq wek mucmel sabit dibin ku kaînat jî tezahureke vê heqîqetê ye. Heyberên di vê alema ku em jê re alema şehadetê (li ber çavan) dibêjin, wek îzafî mewcûd in; ew bi heyberên xwe hîç yek ji wan heyî nabe. Ew bi bûna xwe wek mezher û xuyagehên sifetên Heyberê Mutleq; berhemên wî, hukmên wî, qudreta wî û aferînerîya wî mewcûd têne jimartin. Zatê Ulûhîyyetê, digel ku di hemû heyberan de aferînerîya xwe, qudreta xwe, hikmeta xwe, tedbîra xwe, teserrufatîya xwe û sifetên xwe îzhar dike jî lê alema hebûnê, hîç ti zemanî ne zihûra Zatê wî ye. Wate alema hebûnê ne zihûr û xuyabûna Zatê wî ye, lêbelê ew zihûr û xuyabûna sifetên wî ye.

Ji lewma Zat, ji her tiştî mûqeddes û mûnezzeh e. Heke roj nebe tava wê jî nabe; lêbelê ronahîya rojê, digel ku ne xwedî hebûneke ji rojê cuda ye jî dîsa ew ne roj bi xwe ye. Heke mirov her tiştî Ew, zanibe û nas bike; hingê mirov kaînatê û alema hebûnê îlah qebûl dike ku ev jî rê li ber wê maddeperestîyê vedike ku "Yek"ê "her" difikre.. Ew bawerî'ya ku Eflatûnî ew li holê danîye û jê re panteîzm tê gotin, ha serkehnîya wê ev wehm û bawerîya sabita çewt e. Hinekan xwestiye Wehdetul Wucûdê jî bikişînin nav vê sîstema bawerîyê û ew di nav vê sîstemê de qebûl kiribin jî sofîyên heqîqî, bawerîyeke wiha xurifî tim û daîm red kirine.. Lewra digel zanîna ku her tişt, bi hebûna Wî hatiye

hebûnê jî, tenzîhkirina Zatê wî ji her tiştî, bawerîya Wehdetul [474] Wucûda rastî ye. Wate kaînat, xuyageh û mezherên sifetên Heq in; lêbelê Zatê wî ne kaînat e. Lewra aferîner, bi ti awayan di şeklê aferîndeyan de xuya nabe. Dijbera vê jî bûna xwediyê kaînatekê, kufra eşkere ye. Lewra Cenabê Heq mûxalefetun li'l-hewadîs e. Wate heval û hemtayê wî nîn in, ew naşibihe hîç yekî ji mexlûqatên xwe. Ji lewma Ew, ji her cure tewsîfa bi sifetên antropomorfîk (beşerî) mûnezzeh e. Ji xwe malûm e ku cihû û krîstîyan ji vê heqîqetê ew qeder dûr bûne û bipêşve çûne, heta ku cihûyan gotiye; Ûzeyr -eleyhisselam- krîstîyanan jî gotiye; Îsa -eleyhisselam- haşa- kurê Xuda ye!! Ev hemû tezahurên dalaletê/rêşaşîyê ne ku însanî ew di keş û hewaya xeyala xwe de hilberandine û piştre rabûye ew bawer kirine. Vêca wek bersiveke îlahî ji wan re Xudê Teala wiha ferman dike, dibêje:

"**Wan** [mûşrik û înkarçîyan di dema ku hevpar jê re çêkirine de] **Xuda, bi awayê layiqî mezinatiya wî, nas nekirine û ew nezanîne. Halev e ku roja qiyametê sererd tev di teserufatiya wî de ye. Asîman jî wê di destê qudreta wî de civandî bibin! Ew ji tiştên ku mûşrik ji wî re dikin hevpişk bilind, pak û mûnezzeh e!**"[475]

Li ser vî esasî kelîma tewhîdê ku bingeha bawerîya Îslamê pêktîne, di heqîqetê de bi lefzê «**la îlahe**» ji dilê xwe rakirina hemû bawerîyên şaş û teleqqîyên îlah e, di cihê wê de bi îfadeya «**îllellah**» jî bicihkirina bawerî û tekhiştina Xudayê mûteal e ku ew, ya rasttirîn e, Cenabê Heq jî ew qebûl kiriye.. Çawa Xudê Teala di ayetên pîroz de jî ferman dike, dibêje:

"**Ellah ku ti îlah ji wî pê ve nîn in; Ew her tim sağ e, her ragirê heyînê ye** (ku her tişt bi wî hatiye heyînê). **Ne xew Wî digre, ne jî hûnijîn. Hemû tiştên ku li erd û asîmanan hene, yên Wî ne.**"[476]

474. **Wehdetul Wucûd**, teleqqîyeke tesewwufî ye, ew ji terefê Hezretê Mûhyîddîn Îbn-î Erebî ve hatiye bi sîstemkirin. Di vê babetê de teleqqîyeke din heye ku jê re "**Wehdet-a Şuhûd**"ê tê gotin. Ev jî fikra Hezretê Îmam Rabbanî ye ku wî jî unwana "**Mûceddid-ê Elf-ê Sanî**"/"**Nûkerê hezarê duduyan**" wergirtiye. Ev herdu dîtin-nêrîn, di esilê xwe de ji îzahata heman tiştî ya ji pencereyên ferqdar pê ve ne tiştekî din e. Wate herdu jî ferqa di navbera fehmkirin û eşkerekirina mahîyeta sifetê «Wucûd»ê ya Cenabê Heq de ye ku em dikarin wan di navbera Wucûd/Hebûnê de li alemê bibînin.. Lê bi ferqekê ku Wehdetul Wucûd hisskirina tewhîdê ye; Wehdet-a Şuhûdê jî mûşahedekirina tecellîyên tewhîdê ye. Di esasê xwe de her yek ji van halek e, divê ew bi şîroveyên felsefî yên ku têne kirin, neyêne tevlîhevkirin.

475. Zumer, 39/67.

476. Beqere, 2/255.

“**Tiştekî ku wekî Wî be nîn e. Her Ew e, bîser û bîner**.”[477]

“(Ya Resûlê min!) **Bibêje: Ew Ellah yek e. Ellah samed e** (îhtîyaca herkes û her tiştî bi Wî heye. Lêbelê îhtîyaca wî bi xwe bi ti kes û çi tiştî nîn e). **Ew nehatiye welidandin û wî kes newelidandiye. Hîç ti hemkûfekî wî nîn e**.”[478]

Welhasil îdraka me di bara Zatê wî de, bes di çarçoveya wan întîba û hikmetên ku me ji alema xwe girtine de Zanîna wî û teslîmbûna ji wî re ye. Yanî bende, di vê alema fanî û nav pîvanên fanî de ji çi hal û qabilîyetê re bûbe xwedî bila bûbe xwedî, dîsa ew di babeta îdrak û fehmkirina Zatê wî de bêkêr e, bêkêr e, bêkêr e...

Wekî ku Xudê Teala di Qur’ana Pîroz de daye zanîn; dema Mûsa -eleyhisselam- li Çîyayê Tûrê bi Cenabê Heq re axivî, wî ji vê axaftina xwe hest bi çêjeke mezina manewî kir. Ew bi tecellîya îlahî ya ku t‘amkirî ji xwe çû. Wî xwe jibîr kir û êdî nezanî ku ew li dinyayê ye, yan jî li axretê ye, adeta ew ji bo derveya zeman û mekanî derket. Di nav eşq, wecd û îstiğraqeke mezin de di dilê wî de arzûyeke dijwar ji bo dîtina Zatê Mezinê Xuda şîyarbû û peyda bû, wî ev ji Cenabê Heq taleb kir. Vêca Xudê Teala jê re got:

«**Len teranî; tu yê hîç mîn nebînî!**» û jê re da zanîn; li çîyê binêre, heke tu karibî wî li cihê wî sabit bibînî, tu yê karibî min jî mûşahede bikî. Li gorî rîwayetan, ji pişt hîcabên bêjimar, ji Cenabê Heq tecellîya nûrekê li çîyê xuyabû. Çîya peqî û herifî. Ji vê dehşetê Mûsa -eleyhisselam- ji xwe çû. Dema ew bi xwe hat, ji ber ku ew ji heddê xwe bûrîbû, wî Cenabê Heq tesbîh kir û îstiğfara xwe anî.[479]

Ha ev heqîqeta Qur’anî jî delîleke eşkere ye ku di îdraka Zatê Îlahî de beşer ji bo bêkêrîyeke mûtleq mehkûm û girêdayî ye.

Digel vê jî wekî ku di hedîsên şerîf de jî hatiye ragihandin; mûmîn wê di cennetê de Zatê Îlahî mûşahede bikin, aynî wekî ku ew li vê dinyayê heyva çardeh şevî jî dibînin. Di navbera vê rastîyê û wê heqîqeta ku me li jorê gotî de nakokî û tezadek nîn e. Lewra şertên li dinyayê û şertên li axretê ne aynî ne. Yanî wê li axretê îstîdad û qabilîyeteke ferqdar ji mûmînan re were îhsan kirin ku ew mûşahedekirina Zatê Îlahî li cennetê mûmkin bike. Çawa pêğemberê

477. Şûra, 42/11.
478. Îxlas, 112/1-3.
479. Binêrin. Sûretê ‘Eraf, 7/143.

Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di nav şertên vê dinyayê de nehatiye hiştin, lêbelê ji terefê Cebraîl ve singa wî hatiye qelişandin û di amelîyateke manewî re jî derbaskirina wî, ji bo bi wî dan qezenckirina pêkhatin û qabilîyetekê bû ku karibe bi wezîfeyên taybet ên mezin û giring rabe.. Di rewşeke beravajî de taqeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi pêkhatineke normala beşerî ne ji bo van wezîfeyan, ne jî ji bo tecellîyeke mezina wekî mîracê kafî û têr dihat..

Welhasil ji bo mirovên ku karibin **ji îmanê ber bi îhsanê ve** mezin bibin û herin, ha di ronahîya van hemû sirrên îlahî de karîne ji bo heqîqet û marîfetê nail bibin. Bendeyên wiha, dibin reşka çavê kaînatê û cewhera wê. Ev, însanê kamil ên tam rastî ne. Ew tim û daîm li wusleta alema ezelî, yanî li gihiştina Hebûna Mûtleq digerin û bêrîya wê dikin. Ketina alema van qeyd û bendan, ketina alema hebûna îzafî, ji bo wan adeta ğurbetek e. Lêbelê ew, li vê alemê ji hebûna miroka xwe hatine selixîn, zanîne ku hebûna wan bi hebûna Heq heye û îradeyên xwe ji îradeya Heqq re teslîm kirine.

**Cenabê Heq, me tevan ji bo îmaneke rasttirîn û yeqînî mûyesser bike. Bağê îmana me jî di îstîqameta rizaya xwe de bi ğunçeyên amelê salih xweşik û mûzeyyen bike. Me ji bo hebîbê xwe bike cîran û me bi cemala bi-kemala Zatê xwe mûşerref bike!..**

**Amîn!..**

**“Ew kesê ku bi nûra Heq dinêre, di zerreyê de ebedîyetê dibîne, di dilopekê de pehnavê** (okyanûsê) **tevî seyr dike**.” [480]

## 2. SIFETÊN ÎLAHÎYYE Û TECELLÎYÊN WÎ

Zatê Cenabê Heq yek e; sifetên wî jî bi jimartinê xilas nabin. Yanî miqdarê sifetên wî ne dîyarkirî ne, ew bêdawî ne. Ew bi tenê temamê sifetên xwe dizane. Wî, beşek ji van sifetên xwe sade ji bo pêğemberan, beşek ji wan jî -wekî not û neh navên xwe- ji bo însanên dîger dane zanîn. Alim jî ji gellek sifetên îlahîyye waqif in ku ew, ne di nav not û neh navan de ne.

Hemû sifetên îlahî yên ku têne zanîn û yên ku nayêne zanîn jî, ji bo îfadekirina mûkemmelîyeta ji xeyalê biwêdetira Xuda yê mûteal e, ku ew tekane Aferînerê kaînatê ye, ew ji hemû sifetên nuqsanîyê mûnezzeh e û bi hemû sifetên kemalê jî mûttesif e. Ji vê hêlê ve, sifetên îlahî di du kategorîyan de hatine tesnîfkirin:

a. **Zatî**

b. **Subûtî** nuqsanîya yekî ji wan, yan jî îlawekirina yekî ne guncaw û mûnasib ji bo van ne mûmkin e.

Ew jî wiha ye:

Kemala hebûna wî; bi bûna wî ya sağ û **xwedîyê heyata** mûtleq û berdewam e. Sifetê heyata wî, dijberê wê mirin e ku ew ne heyat e, lê bi berevajî wê ew heyat, heyateke ji wî re taybet e. Ev babet di Qur’ana Pîroz de wiha tê tewsîfkirin:

**“Xwe bispêre wî xwediyê heyata daîmî ku di şanê wî de mirin nîn e.**.” [481]

480. Hezretê Mewlana
481. Furqan, 25/58.

**Îlm**ê wî, ji bûna mehsûla raman û fikrê mûnezzeh e. Li vê kaînatê nîzam û ahenga ew qeder hûr û hessasa ku tê dîtin, ewa ku hîç ti aqil û îrade pê nagihe, delîla durusttirîn e ku Cenabê Heq çi qeder xwedî îlmekî bêdawî ye, bê nîhayet e.. Ew wisa ye ku însan li vê kaînatê dikare bi arîkarîya bêjimar kesan û bi li ser hev îlawekirina zemanê sedsalan û di encama çendîn îlm û qaîdeyan de bes bi keşf û îcadeke biçûçiktirîn jî bigihe. Mesela îro di babeta îrtîbata bi telefonên destan de ku zehf ferehvan e, ji aferîna însanî çi qeder bi şûn de û bi li ser hev kombûna çendîn tecrûbeyan hatiye bicihanîn. Pêşveçûn û tereqqîyên dîger jî wiha ne. Haleveku ev keşf, îcad û sirrên bêdawî yên ku hê nehatine vekirin, ew xusûsîyet in ku Cenabê Heq di an û bîstikekê de bi îlmê îlahî yê xwe di nîzama kaînatê de bicih kirine.

Ev mîsal, çi xweş ferqa bêdawî'ya di navbera îlmê Cenabê Heq û îlmê mexlûqatan de îfade dike:

Di esnaya wê seyaheta ku Xizr -eleyhisselam- ji Mûsa -eleyhisselam- re hadîse û bûyerên ecaîb, ğeraîb û hikmeta wan mechûl şanî dabûn de çûkekî beytik hatibû, li ser kenarê gemîya ku ew lê siwar bûn, danîbû. Piştre wî bi nikilê xwe av ji behrê wergirtibû. Xizr -eleyhisselam- ev dîmen ji Mûsa -eley-hisselam- re şanî dabû û ev teşbîh jê re kiribû:

"*-Li kêleka îlmê Xuda, îlmê te, min û hemû mexlûqatan bi qeder vê avê ye ku wî ji behrê wergirt*."[482]

Hezretê Mewlana di ronahîya van heqîqetan de hikmeta talîmkirina sifetên **îlm**, **semî** û **beser** ji bo beşerî wiha îfade dike, dibêje:

"*Cenabê Heq daye zanîn ku ew 'elîm e, yanî « her tiştî pirr baş dizane» ji bo tu bitirsî, fesadîyê dernexî û tevdanê nekî*."

"*Wî daye zanîn ku ew semî ye yanî «her tiştî pirr baş dibihîze» da ku tu lêvên xwe li ber peyvên mekroh û xirab bigrî*."

"*Wî daye zanîn ku ew besîr e, yanî «her tiştî pirr baş dibîne» ji bo tu nekevî xirabîyên veşartî û bidizîkahî*."

Hemû kelamên ku hene jî her yek ji wan tecellîyeke **sifetê kelamî** yê Cenabê Heq e. Bi vî awayî Xudê Teala, qudreta bêdawî'ya xwe di sifetê xwe yê kelamî de dide tezahurkirin. Ji bilî vê jî ew navê şerîfê xwe bi zimanên

482. Buxarî, Tefsîr, 18/4.

bêjimar dide zikrkirin. Ewên ku ne zindî têne zenkirin jî ji bo her mexlûqî ji sifetê xwe yê kelamî zimanekî ji wan re taybet bexşandiye.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

“**Heft asîman, erd û her tiştê ku di wan de hene, wî tesbîh dikin, pak didêrin; hîç tiştek nîn e ku bi hemdê tesbîhê wî neke; lêbelê hûn ji tesbîhên wan fehm nakin**..” [483]

Hîç şubhe nîn e ku hemû tesbîhkirin ji ber ku bi îsm û navan dibin, naxwe ji bo me mirovan tekane wasîteya naskirina Xudê Teala, ew tecellîyên sifetê îlahî ne, ku di rast û qada îdraka me de ne.

Ev sifet jî, dema mirov maneyên wan dihizire «sifet»in, lê dema mirov delalet û şanîdêrîya wan li ser Zatê ku wesfê wî didin li ber çavên xwe digre jî ew «nav» in. Yanî Xuda, bi van sifetan ew qeder mûttesif e ku ev, ji bo wî di dereceya nav û îsmê de ne. Çawa ku şexs di navbera mirovan de jî heke bi sifetên xwe di sewîyekeke bilind de di nav hatin wesifandinê de bin, di netîceya wan sifetan de ew sifet ji bo wan wek navek tê bikaranîn. Her wekî Hezretê Siddîq, Îmamê Ezam, Meyyîtzade û yên wekî van.

Ji lewma ji bo sifetên îlahî û tecellîyên wan “**tecellîyên esma**” hatiye gotin. Di vê meyanê de her yek ji sifetên wî, bizzat ji terefê Cenabê Heq ve bi vê ayetê:

وَلِلّٰهِ الأَسْمَاءُ الْحُسْنَى

“**Navên sipehîtirîn yê Xuda ne**.”[484] wek navekî wî hatine îfadekirin û Mewlayê mezin, xwe bi wasîteya navên îlahî yên xwe ji bo îdrak û fehmkirina bendeyên xwe pêşkêş kiriye.

Lewra bende, bi nav û îsmê îrtîbata xwe bi ulûhîyetê re dabîn dike. Ev rastî, ji bo tenzîhkirina Xuda li holê datîne ku navê wî regez û unsureke jêneger e. Bi vê nêrînê bende, fiêlên qenc yan jî xirab ên ku li hemberî wî dike, ne bi heqîqeta ulûhîyeta wî ve, lêbelê bi navê wî ve areste dike. Bi vî awayî heqîqeta wî tim û daîm mûnezzeh dimîne.

483. Îsra, 17/44.
484. ‘Eraf, 7/180.

Bi rastî jî însan, heke navê xas ê Cenabê Heq nebe, di rêxistina mûnasebetên xwe li hemberî wî de zehmetîyê dikişîne. Lewra însan hîn bûye ku hebûna wî di navê wî de bibîne û wî bi navê wî îfade bike. Ji bo însanî nav, tescîla hebûnê ye. Ji bo vê ye ku dema Cenabê Heq Adem -eleyhisselam- aferand, hemû nav li wî hîn kiribûn û çêtirbûnîya Hezretê Adem ya ji melaîketan jî bi vê hatibû îfadekirin. Lewra zanîna navê heyberekê, maneya wê naskirina hebûna zatê wî ye jî. Çawa em jî heke Cenabê Heq bi navên mezinê wî nezanibin, naxwe emê di bara wî de çi bizanin?

Yanî însan, tim û daîm îhtiyaca wî bi wan navan heye ku xusûsîyetên Rebbê wî dîyar dikin. Her bende, di rewşên curecur ên ku dijî de dixwaze bi navekî ji rewşa xwe re guncaw Rebbê xwe bang bike. Heke ev nav nebûna, îrtîbata bi wî re pirr nuqsan û kêm dima, belkû jî mûmkin nedibû. Dikare were gotin; ev nav ew îfade ne, ku heta bi dereceyekê bêzimanî û lalîtîya bendeyî li hemberî Zat û ulûhîyetê dibin, yanî ew kilîl û miftah in ku bêçaretî û jêdernehatina îdraka beşerî vedikin. Lewra sade zikrkirina navên Xuda jî xurekê didin îmanê, hizûra îlahî didin hisskirin, eşq û hezkirina ji wî zêde dikin, li hemberî wî însanî dikin xwedî xuşû, reğbetê dixin xelat û sewabên li cem wî, wî ji lezzet û zewqên fanî yên dinyayê didin vegerandin, berê wî didin ser ya ebedî û wî bi arzûya wuslet û vegera cem Heq diperitînin.. Bi navên Xuda tijebûna wan zikr û dûayên ku Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di rewşên cuda cuda de xwendina wan tewsîye kiriye jî, van feydeyan şanî didin.

Ew mûmînê ku di nav şert û mercên zor û zehmet de be û îhtiyaca wî pirr bi rahma îlahî hebe, dema ew arîkarîyê ji Rebbê xwe dixwaze, li tabîrekê digere ku pê vî halê wî xulase bike û wî îfade bike, ew penaha xwe dibe ber navên «Rahman û Rahîm».. Dema ew di bin giranbarîya gunehan de diperçiqe, dema ew hest pê dike ku bendê dilê wî qetîyaye, hingê li wesîleyekê digere ku wî ji Heq nêzîk bike, hingê ew penaha xwe dibe ber navên «Ğeffar û Settar».. Dema ew qudret û ezameta îlahî yên ku li kaînatê yan jî di rûh û gîyanê wî de tecellî dikin, temaşe dike, ew li beyanekê digere ku wan hest û marîfeta xwe bîne zimên, ewên ku di kitêban de nayêne îfadekirin, hingê ew «**Ellahû Ekber**» dibêje, vêca ew gîyanê wî yê ku bi ber pêlan diket, bi hizûr û aramîyê digihe.. Welhasil bende, di halên curecurên xwe de bi navgîna sifetên curecur ên Cenabê Heq, derîyên ku hatine girtin ên gîyanê xwe vedike û çendîn îxtîlac û îhtiyacên ku hest bi wan dike, ji xwe dibe.

Ji bo vê ye ku Cenabê Heq, xwe ji heqîqetê re mûtaliq, lêbelê bi terzekî ku însan fehm bikin, daye naskirin. Yanî di xwe dan naskirina wî ya bi wasîteya hinek sifetên xwe yên wekî Alim, Hakim, Qadir, Ğefûr û yên wekî van de û di wiha naskirina mirovan ya ji bo wî de di esilê xwe de sebebeke şexsî ya aîdê însanî heye. Lewra însan, hinek ji van wesfan -çendan heta tu bibêjî bes sînordar bin jî- di wî bi xwe de peyda dibin. Ev jî mewhîbe û daneke îlahî ye ku ji bo îman û hîdayeta îdraka beşerî hatine lutfkirin.

Bi nêrînekê tecellîya sifet û fiêlên Xuda, ji «tenezzulata îlahî ya berê wê li têgihiştina beşerî» îbaret e. Tecellî, yê ku tecellî dike, îzhar dike. Lêbelê ev îzhar, ne wekî ku di Zatê wî de wisa ye, lêbelê ji îdraka me re di halê tenezzulatê de tê bicihanîn. Hezretê Mewlana di ronahîya vê rastîyê de ferman dike, wiha dibêje:

"*Ew kesê ku bi nûra Heq dinêre, di zerreyê de ebedîyetê, yanî taveroja bêdawîtîyê dibîne, di dilopekê de pehnavê (okyanûsê) tevî seyr dike*."

Hezretê Îbrahîm Gulşenî bi îdraka vê ziravîyê van terennuman dike, dibêje:

*Ev çi ye ku tu di dilopan de bûyî umman cana?*
*Ev çi ye ku tu di zerreyan de bûyî şemsa tavan cana?*

"*Ey can, di nav dilopan de bûna te bi deryaya ummanê çi ye? Di nav wan zerreyan de bûna te bi rojeke ronaka tavan çi ye, ey can?*"

Bersiva vê pirsê jî di van peyvên Hezretê Mewlana de veşartî ye:

"*Kî dikare karê Heq fehm bike ku ji hikmeta wî nayê pirsîn? Kî dikare bigihe heqîqeta wî karî? Ev peyvên ku min gotine, peyvên zerûrî ne, ku bes ji bo vegotinê hatine gotin*."

"*Di esilê xwe de karê dîn, ji heyran bûnê, ji şaş mayînê pê ve ne tiştekî din e. Lêbelê ev heyranî, ji ber ku aqil nagihîyê jî ne berê pişta xwe dana qibleya heqîqetê ye, bi berevajî vê ji bo dostê xwe wek mest û mûsteğreq ketina heyretê ye*."

"*Lewra heke em bikevin xewê, em bi eşqa Wî ji xwe çûne, em ji bo Wî bûne mest. Heke em şîyar bibin, em di destana ku Wî nivîsandî de, çendîn sirran dijîn*."

"*Heke em bigrîn, em bi rizqên Wî yên ji bereketan tije bûne ewrên Wî; heke em bikenin, em dibin birûskên berraq ên Wî*."

"*Heke em hêrs bibin, em xwe ber bi dijwarîyê ve berdin, em bikevin cengê, ev, dibe xuyabûnîya qehra Wî, dibe tecellîya celala Wî. Heke em haşt bibin, em uzr bixwazin, ev jî bi derve derketina hezkirina Wî, dîmena wê ye.*"

"*Em li vê alema gîrîft (girêka kor lê ketî de) dibin kî? Em, her yek ji me ji hebûna sihekê, ji hîçekê îbaret in. Em wekî elîfê ne, ku naşibihe hîç herfekê, hîç nuqteyekê wernagire. Her hereket, her halê ku ji me xuya dibe, tecellîya nav û sifetên îlahî yên Wî ne.*"

Ew hander û tehfdera ku Hezretê Mewlana di deryaya heyret û heyranîyeke wiha de noq kiriye, tecellîyên nav û sifetên Cenabê Heq in, ku di wî bi xwe û vê alemê de hene, ew qeder ulwî û bêdawî ne ku aqilan dixin dehşet û heyretê. Ha ev rastî, yanî pirrbûnîya navên Xuda, fehmkirina pirrbûnîya kirinên wî hêsan dikin. Bêsînorîya di mûhtewaya ulûhîyeta wî de îfade dikin. Wî; ji têgihiştinên ku sînordarker û teng mûnezzeh dikin. Nexasim sifetên hevdij ji bo wan têgihiştinên kartêker û mûessir dibin asteng ku di wan de temayula sînordarkirina ulûhîyetê heye. Lewra hinek hene ku dixwazin wî sade wek Zahir bibînin. Ew wisa ye, lêbelê Xuda, di heman demê de Batin e.

Yanî Xudê Teala "camîu'l-ezdad" e; di hebûna xwe de sifetên hevdij kom kirine.

Vê mezinatîyê, sebeb ji wan re daye ku hemû heyber ji hev ferqdar û cihê bibin. Li gorî vê ew keyfîyetên ku bikevin îdraka beşerî, bi xêra hevdijan dikarin werin fehmkirin. Zêdebarî vê jî hevdijî çi qeder kamil (û tam) be, îdrak (û fehmkirin wan jî) ew qeder berraq dibe.

Li alîyê din, hevdij li alema me, bi hev re nahewin, di wê temayulê de ne, ku hev û din tine bikin û hev-aynî bibin. Ev keyfîyet, ji yekbûnîya esilê hebûnê, diwelide ku ew hem di alema fîzîkî de, hem jî di qada heqîqetên metafîzîkî de di sûretekî mûtleq de carî ye, derbasdar e. Yanî îcaba "adetullah" e. Çawa ronahî bi awayê tinekirina tarîtîyê; germahî jî bi awayê tinekirina sermahîyê di temayula hev-aynîbûnê de ye, aynî wisan danûstandinên rûhî ku di tefekkur û tehessusê de têne meydanê jî her îcaba vê qanûna îlahî ne.. Lêbelê hevzid û hevdijî'yên di Zatê îlahîyye de, wekî ku di alema me de wisa ne, ew ne di wê temayulê de ne ku hev tine bikin lêbelê di wê îstîdad û îqtîdarê de ne ku karin bi hev re bihewin. Bi vê nêrînê, hîç ti sifetekî Cenabê Heq di Zatê Wî de ti ziddeke wan nîn e. Yanî Ew, xwedî heyat e. Lêbelê heyata Wî ji wê mirina ku ji bo mexlûqatan ziddê heyatê ye, mûnezzeh e. Ew mewcûd e, heye; lêbelê hebûna Wî ji tinebûna ku ziddê hebûnê ye, mûnezzeh e. Ew xwedî îlm e; lêbelê ew ji cehaleta ku ziddê

îlmê ye, mûnezzeh e. Ew îhtiyacan dibe; lêbelê ji hewcedarbûnîyê mûnezzeh e.. Heta bi dawîyê, her sifetê îlahî wiha ye.

Li ser vî esasî ji ber ku şîyan û qudreta me jê re nîn e, em ji mûhtewaya mûtleqa sifetên hevdij ên li cem Xuda waqif bibin, dîsa ji ber ku em bes bi girtina întîbayên ku ji alemê dikevin qada mûşahedeya xwe dikarin bibin xwedî îqtîdara fikirînê, naxwe îdrakkirin û tehlîlkirina wê keyfîyetê di ser taqeta me de ye.. Lêbelê em dikarin vê wiha bi mîsalekê vebêjin:

Em ji kabloyeke elektrîkê, li gorî îstîdada wergirî dikarin du encamên hevdij ên wekî di berfgîrê (dolaba qeşayê) de sarkirinê, di sobeyekê de jî germkirinê bidest bixin. Em ferezî bibêjin; heke em van herduyan di heman odeyê de bixin faalîyetê, keyfîyetên germkirin û sarkirinê, digel ku ew bi pîvaneke diyarkirî bandora hev tine dikin jî, dîsa ev rewş, di kabloya elektrîkê de ku ew serkehnîya herduyan e jî dernakeve holê. Li gorî vê ji ber ku Cenabê Heq, hemû heyber bi îstîdad û îqtîdareke diyarkirî techîz kirine, ew jî di vê çarçoveyê de ji bo tecellîya esma û navan dibin makes û xuyageh û têkoşîna hevdijan pev re, ji ya zêde ber bi ya hindik ve îfadeyeke ğelebê hildigre wek ebedî dewam dike û wisan diçe..

Naxwe têkoşîna hevdijan pev re di alema me de, di esilê xwe de ji livbazîyeke tinekirinê zêdetir, bi meqsûda dabînkirina ğelebetê ye. Lewra her keyfîyeta dij, ji ber ku pala xwe dide navekî yan jî çend navan û ji ber ku esma-yên îlahîyye jî ebedî ne, ev tezadî û hevdijî ji holê ranabe.

Netîceyeke siriştî ya vê ramanê ev e ku di mûmînan de sifetê îlahî yê Xuda "**Hadî**" di halê ğelebê de tecellî dibe, di kafiran de jî sifetê "**Mûdill**" (di dalaletê werkir) di halê tecellîyê de ye. Naxwe di alema me de hevdijîya îman-kufrê jî wê heta bi qiyametê berdewam bike. Pevçûna di navbera van de ji wesfê "ğelebe" bi pêşve derbas bûye, ne mûmkin e pevçûna navbera van bi tinekirina yekî ji van bi temamî ya dinê bi encam bibe. Lewra tecellîya hemû esma'yên îlahî bênavber û ebedî ye.

Netîceyeke dîgera vê jî ev e: Kafir çi qeder bibin xwedî quwwet û qudret bila ew qeder bibin xwedî quwwet û qudret dîsa jî ew nikarin îmanê tine bikin. Heman heqîqet ji bo mûmînan jî derbasdar e. Ev heqîqeta ku me wek qadeke faalîyetê ji bo îman-kufrê behsa wê kiriye, ew ji bo hemû tezad û hevdijîyên dîtir ên li kaînatê jî derbasdar e.

❀

Li alîyê din, kaînata ku bi terkîbên tecellîya hemû esma'yên îlahîyye têne wicûdê, ji hêla bûna bi mezher ji bo tecellîyeke wiha ne tek e. Heman keyfîyet, di bara **însan** û **Qur'an**ê de jî çêbûyî ye.

Kaînat, di vê tecellîyê de alemeke fiêlî pêktîne, Qur'an jî menzûmeyeka heqîqetan e ku têde hemû rastîyên kaînatê di sûretê "kelam"î de hatine îfadekirin. Însan jî di vê bûyînê de aynî wekî kaînatê, ji hêla bûna bi mezher û xuyageh ji bo tecellîyên hemû esma'yên îlahîyye ve di cihê kakil û cewhera kaînatê, tuxmê wê û tokê wê de ye. Ji lewma jê re "alema seğîr" yanî alema biçûk hatiye gotin.

Hevdijîtîyên di esmayên îlahîyye de, mewcûdbûna wan di însanî de jî ku ew bi xwe mekanê tecellîyeke kamila wan e, esil û esas e. Li gorî vê, di mûmînekî de sifetê îlahîyye yê "**Hadî**" ğalib e, lêbelê têde piçek ji sifetê îlahîyye yê "**Mûdill**" jî mewcûd e. Îmana ku di şexsekî wiha de mewcûd e, encama ğalibbûna sifetê îlahîyye yê "**Hadî**" di wî kesî de ye.. Ev rewş di kafirî de jî bi berevajî vê ye.

Encameke siriştî ya vê keyfîyetê ev e; di her mûmînî de ji bo kufrê û di her kafirî de jî ji bo îmanê -hindik yan jî gellek- îstîdad mewcûd e. Ji lewma jîyîna mûmînan di "**beyne'l-xewfî wer-reca**"yê de, yanî jîyîna mûmînan "**di navbera tirs û hêvîyê de**", meseleyeke mûhîm e.. Li gorî vê, gerek e mûmîn ji aqil û bîra xwe dernexin ku di her an û gavê de eger û îhtîmal heye ku lingê wan bişemite.

Li tenişta vê divê mirov ji aqilê xwe dûr neke ku kafirê ji her kafiran dijwartir jî rojekê çêdibe ew were îmanê bîne, bi vî awayî ji bo têde ğalibhatina sifetê îlahîyye yê "**Hadî**" bibe mezher û xuyageh. Divê mirov wî di ronahîya vê hêvî û îhtîmalê de ji bo xwe wek mûxateb qebûl bike..

Di hedîsa şerîf de bal li ser vê heqîqetê hatiye kişandin, hatiye gotin:

"*Kesek zemanekî dirêj bi amelê ehlê cennetê amel dike, piştre amelê wî bi amelê ehlê cehennemê tê bidawîkirin. Kesek jî zemanekî dirêj bi amelê ehlê cehennemê amel dike, piştre amelê wî bi amelê ehlê cennetê tê bi xîtam kirin.*"[485]

485. Mûslim, qeder, 11.

Ha ji bo vê heqîqetê, divê dilê her mûmînî di navbera tirs û hêvîyê de bibe, û divê ew vê destûra îlahî ya di vê gotina Cenabê Heq de tim ji bo xwe bike şîar û durûşm:

“**.. Heta yeqîn** (mirin) **were te, îbadetê her ji Rebbê xwe re bike!**.”[486]

Bi sebeb mechûlîyeta qederê di warê îman û înkarê de ye ku emînbûnîya mûtleq jî, ye’sa (bêhêvîbûnîya) mûtleq jî kufr e. Lewra hîç ti kes nizane ka wê di nefesa dawîn de çi biqewime. Lewra ji bilî pêğemberan û ji bilî wan zatên ku Pêğember ew destnîşan kirine (eşreyên mûbeşşere) wekî din ji bo ti kesî din garantîya xilaskirtina îmanê ya di nefesa dawîn de, nîn e.

Wekî ku me li jorê jî îfade kir, sifetên hevdij yên Zatê Îlahî di nav hev de ne û di halê aramîyê de ne. Ev sifetên Cenabê Heqq di dinyaya me de ku ew alema îmtîhanê ye, bi hev û din re di wesfekî ji bo ğalibbûnê meyyal de tecellî kirine.. Yanî her wekî ku çawa car caran bi tecellîya îsmê “Hadî” ew kesên ku hatine ser hîdayetê ğalib dibin û car caran bi tecellîya îsmê “Mûdill” jî ew kesên ku kafir bûne zêde dibin. Heta digel ğeyretên pêğemberan ên di ser tehemmulê re jî kafir û fasiq tim di nav civakê de peyda bûne û di wan serdemên ku kafir û zaliman seltenet ajotine de jî dîsa mûmînan îmana xwe parastine û ew wisan bi berdewam hatine.

Di Qur’ana Pîroz de sabit e ku dema Eshabê Uxdûd di xendekên ji agir tije de dihatin werkirin îmana wan lawaz nebûye. Dema Îsewîyên pêşî di navbera diranên şêran de can didan îmana wan lawaz nebûye. Dema Hebîbê Neccar ji terefê qewmekî zalim ve bi keviran dihate recimandin îmana wî lawaz nebûye. Dema sêhrbazên Firewn jî bi sebeb îman anîna xwe bi Mûsa -eleyhisselam- bi qurmên darqesban ve dihatin daleqandin û dest û lingên wan dihatin jêkirin jî îmana wan lawaz nebûye. Wan wiha dûa kirine û gotine:

رَبَّنَا أَفْرِغْ عَلَيْنَا صَبْراً وَتَوَفَّنَا مُسْلِمِينَ

“**Ya Rebbî! Sebrê bi ser me de birijîne û canê me wek misliman bistîne!**”[487] wan di nefesa dawîn de mûcadeleya xilaskirina îmanê kirine û ew wek şehîd gihane Rebbê xwe.

486. Hicr, 15/99.
487. Eraf, 7/126.

Ji van heqîqetan, encameke îtîqadî û terbewî (perwerdeyî) ji bo me sadir dibe, tê. Li gorî vê kesek di kufrê de çi qeder dijwar dibe, bila ew qeder dijwar bibe, dîsa mafê hîç ti kesî nîn e ku wî ji banga Îslamê mehrûm û bêbeş bike. Lewra ew, dikare her an û gavekê were rewacê bi tecellîya sifetê îlahî yê "Hadî" yê di bin hişmendîya xwe de bibexşe û bi şexsîyeta xwe biguhere. Yanî di wî kafirê ji her kafirî dijwartir de jî îhtîmala hîdayet-bûnê heye. Cenabê Heq, Hezretê Mûsa û birayê wî Hezretê Harûn ji bo birina banga hîdayetê ji Firewn re wezîfedar kiribûn û ji wan re wiha gotibû:

فَقُولا لَهُ قَوْلاً لَيِّناً لَعَلَّهُ يَتَذَكَّرُ أَوْ يَخْشَى

"**Gotineke nerm ji wî re bibêjin. Belkû ew li şîretê guhdarî bike, yan jî ew ji Xuda bitirse**."[488]

Hîç şubhe nîn e ku ev ayeta pîroz, di heman demê de di babeta teblîğkirina Îslamê de ji bo me jî metodeke mûkemmel pêşkêş dike. Ev metod jî du hîm û bingehên wê hene:

1. Bi uslûbeke nerm a ku ezperestî û enanîyeta wî tehrîk nake teblîğkirina heqîqetê ji mûxatebî re ye:

Çawa Firewn, li hemberî mûcîzeyên Mûsa -eleyhisselam- heke çi qeder zehf caran ji bo îman anînê temayul kiribe jî, lêbelê Haman û derdorên wî jê re bûne asteng û nehiştin ew îmanê bîne. Wî bi xwe jî xwe bi dest ğurûr û kibra xwe ve berda û îman neanî. Lêbelê wî di Deryaya Sor de di dema li ber ğerqbûnê de bû, di nav nekarîn û bêçaretîya xwe de di rewşa ye's û hêvî-nemanê de xwest xwe bi navê îlahî yê "Hadî" bigre û got:

"**Bi rastî min jî îman pê anî ku ji wî îlahê kurên Îsraîl îman pê anîne pê ve ti îlahekî din nîn e. Ez jî ji mislimana me**."[489]

Lêbelê ew Firewnê ku di temamîya temenê xwe de ji bo tecellîya navê "Mûdill" wek talebkar jîyabû, ev îmana wî ya li ber sekeratê ji wî nehatibû qebûlkirin û ew zalimê bêeman, wek kafir çûbû axretê.

Cenabê Heq di ayeteke dîger de wiha gotiye:

488. Taha, 20/44.
489. Yûnus, 10/90.

"(Resûlê min!) **Tu, bi hikmet û şîreta sipehî ji bo rêya Rebbê xwe bang bike û bi awayê sipehîtirîn bi wan re têbikoşe!**."[490] Bi vê ayetê jî ew metod bi kirp îfade kiriye.

2. Bêyî meyzandin ka ew di kîjan rewşê de ne, divê teblîğ hemû însanan bide ber xwe ye:

Firewn çawa zalim û bedbextekî wisan bû ku xwe ji îman-anînê nêzîk nekiribû, di heman zemanî de jî ew cînayetkarekî wisan ğeddar bûye ku ji bo Mûsa -eleyhisselam- tine bike, bi hezaran kurik qetl kiribûn. Digel ku ew mirovekî wiha berbat bû jî dîsa ew ji bo teblîğa îlahî bûye mûxateb. Di ser van hemû sûcên wî de jî Cenabê Heq di ayeta pîroz de di bara wî de gotiye:

"**Gotineke nerm ji wî re bibêjin. Belkû ew li şîretê guhdarî bike, yan jî ew ji Xuda bitirse**."[491]

Ev daxuyanîya îlahî li holê datîne ku însan di kîjan rewşê de dibin bila bibin dîsa divê teblîğ hemû mirovan bide ber xwe û li ser wan şamil were:

Çawa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî gellek caran çûye teblîğ ji Ebûcehl re kiriye, ew ji bo hatina hîdayetê bang kiriye. Ebûcehl jî digel ku bi wijdana xwe pêğembertîya eşkere ya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- qebûl dikir. Lêbelê bi sebeb meğlûbbûnîya wî li hemberî nefsa xwe û bi sebeb tekebbura wî, wî ew heqîqet iqrar nekir û ew bi zimanê xwe teleffuz nekiriye. Lêbelê ev bizava alîcenabane ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo hîdayetbûna çendîn kesên wekî Ûmer bin Xettab, Ebû Sufyan, Hind û Wehşî bûye wesîle ku ew kes di destpêkê de dijminên Îslamê bûn.

Ha ev cîhetê nêrînê, ev uslûba îrşadî gerek di xizmetên îslamî de, gerek jî di hemû mûnasebetên beşerî de divê ew bi qeder rewşên fiêlî, di hemû halên mûhtemel de jî li ber çavan esas were girtin. Ha ji wê uslûba şefqetkarane ya di seredêrîkirin û mûamelekirina digel rewşa hemû mûxateban de sipehîtî, nermahî û zarafet diwelidin. Ew jî derfeta cihbicihkirina gihiştina miradê temîn dikin. Ha ev, bi sipehîtî, nermahî û zarafetê mûamelekirina bi hemû mirovan re cîhetê bingehînê nêrînê ye û ew wek bi mûessirtirîn û kartêkertirîna kamiltirîn û bifeyztirîn e ku di bizav û tevgerên mûtesewwifan de tê mûşahedekirin.

❁

490. Nehl, 16/125.
491. Taha, 20/44.

Cenabê Heq, wek encamekê ji bo tesdîqkirina bi qelb û iqrarkirina bi zimanî ya hebûn û wehdanîyeta zatê xwe û wek mecbûrîyeteke siriştî û wijdanî ya ku ev îman wê diwelidîne, ferman li bendeyên xwe kiriye ku ew bi îbadetan Wî mezin bidêrin, ew bi îbadetkirina ji Wî re werin tekrîmkirin û îstîdad û amadehîya ku vê kirina îbadetan bicih bikin jî di navbera heyberan de sade ji bo însanan û ji bo cinan lutf kiriye.. Ji ber ku Cenabê Heq însan û cin bi îdrak û îz‘anê techîz kirine, xemilandine, vêca ew jî bi qeder vê îdrak û îz‘ana wan mes’ûl, berpirs û mûkellef kirine.

Cin digel ku bi hijmara xwe ji mirovan zehf zêdetir in û bi vê sedemê jî çi dema ew û însan di her ayeteke ji Qur’ana Pîroz de pevre hatibin îfadekirin jî dîsa ew berî mirovan hatine zikrkirin jî lêbelê dîsa di namzedîya şeref û mezinatîyê de çêtirîn û bilindtirîn cih û meqam ji însanî re mexsûs e, taybet e.. Digel ku rewş wiha ye jî însan û cin, di mûkellefîyeta îbadet û evdînîyê de ku ew ğaye û emanca aferîna wan e, pevre ne. Cenabê Heq ev babet di Qur’ana Pîroz de bi vê ayeta celîle daye zanîn, gotiye:

وَمَا خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالإِنسَ إِلاَّ لِيَعْبُدُونِ

“**Min cin û însan aferandine, sade ji bo îbadetê ji min re bikin**.”[492]

Ellah Teala, rahma wî ji ğezeba wî derbas bûye û ew xwedî merhemet û dilovanîyeke bêdawî ye, ji bo îfakirin û bicihanîna wezîfeya “evdînî”yê ku Wî însan û cin pê mûkellef û binbar kirine, ew bi aqil, îdrak, îz‘an û qudreta temyîzê (ji hev veqetandina qencî û neqencîyê) techîz kirine û ew bi vê tenê jî serberedayî nehiştine lê bi îlawe li ser van ew bi arîkarî û piştevanîyên îlahî jî teltîf kirine, ew bi lutfbar kirine. Kaînat, bi her unsur û regezên xwe ji bo hebûna Cenabê Heq pêşangeha delîlan e, ji bo sivikkirina zehmetîya guhastina van delîlan bi aqilê cinan û însan jî bi şandina qafîle û karwanê pêğemberan û mûrşidên kamil ji wan re arîkarî kiriye. Bi rastî ji bo hîç ti ferdek ji vê arîkarîya îlaweyî bêbeş nemîne, ew bi însanê nixurî (pêşî) destpê kiriye û kalê însanî Hezretê Adem bi pêğembertîyê tacdar kiriye. Lêbelê bi sebeb çêtirbûnîya însanan ya ji cinan e ku hemû pêğember ji navbera mirovan xuya bûne û hinek ji wan jî li ser cinan hatine bierkedarkirin.

492. Zarîyat, 51/56.

Digel ku di warê heqîqetên mûcerred û xwerû de teblîğa hemû pêğemberan bi hev û din re aynî ye jî lê hukmên îctîmaî, rêveçûneke paralel bi tekamula ku heyata însanî qeyd kiriye re taqîb kirine û di pêğemberê axirzemanê de û bi Qur'ana Pîroz a ku ji wî re hatiye şandin bi kemalê hatiye gihandin.. Ew, êdî careke din ji hukmê nayê rakirin û ewê wek mûcîzeyeke beyanê heta bi qiyametê jî her dewam bike. Ji ber ku Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- jî ji bo herdu alemên cinan û însan hatiye bi memûrkirinkirin û wezîfedarkirin sifetek ji sifetên wî jî "Resûlû's-Seqeleyn" e. Seqeleyn navek e, li ser herdu alemên cinan û însan şamil tê.

Ev kaînata ku bi terkîb û pêkhata esma'yên îlahî hatiye wicûdê cihê teşhîr û pêşangeha çavkwîrkera qudreta îlahî ye. Her ku îlm bipêşve diçin, tecellîyên xarîqe yên hunerê Wî hê ji kûr ve û bi awayekî berferehtir têne fehmkirin û di babeta guhastina ji bo qudreta Xudê Teala de her an û gavê merhele û qunağên hê mezintir têne qutkirin. Di zemanê me de ji xebatên fezayê bigre heta bi zanista genetîkê ew tereqqî û pêşveçûnên ku zanistan qeyd kirine û heta xarîqeya kompûterê jî hemû faalîyetên zanistî, di mahîyeta tesdîqkirina vî hukmê me de cereyan dikin. Ji lewma di Qur'ana Pîroz de hatiye gotin:

"**.. Ji navbera bendeyên wî sade alim** (bi awayê pêwîst) **ji Xuda ditirsin.**"[493]

Lewra îlm, bi her pêşveçûn û tereqqîya ku qeyd dike ji qudret û ezameta îlahî delîlên nû ji bo îdraka beşerî pêşkêş dike. Kaînat bi vî wesfê xwe, menzûmeyeke bêdawî ya heqîqetan e ku ji bo keşfa îdraka însanî amade ye. Ew bi vî halê xwe, adeta pirtûkeke şiêr û mûfessal e ku ji bo peyvan hatiye rijandin. Ew mirovên ku di îlmê de xwedî rusûx in (ji hûr û kûrîya îlmê waqif in) bi rîayetkirina fermanên îlahî, ji wan heqîqetên ku xwe di satir û xetnivîsan de şanî dane dibûre û bi seyaheteke manewî destpê dikin, hikmet û sirrên di pirtûka kaînatê de dixwînin.

Îlmên fennî hewl didin nîzama îlahî ya li ser alemê hakim di bin navê "qanûnên tebîatê" de bi qaîde bikin. Lêbelê ew mirovên ku di îlmê de xwedî rusûx in, van rastîyên ku ji wan re qanûnên tebîatê tê gotin ji nuqteyeke hê kullî fehm dikin û bi mûrada îlahî ya li ser kaînatê hakim, digihin.

Ew însanê ku kaînata biçûk bi xwe ye jî her wekî aleman menzûmeyeke bêdawîya heqîqeta ye ku ji bo îdraka beşerî hatiye pêşkêşkirin. Ha hikmeta ku

493. Fatir, 35/28.

ji bo însanî “zubde’ya kaînatê” hatiye gotin, yanî jê re cewhera kaînatê, tuxmê kaînatê hatiye gotin jî ev e. Çawa ku di tuxmekî de hemû taybetmendîyên nesla wî bi xwe meknûz e, bi heman awayî her yek ji hemû hikmet û sirrên di kaînat û Qur’anê de jî wek kakilekê di însanî de jî hatine bicihkirin..

Bi îfadeyeke dîger, bi vegotineke din; hebûna Heq Teala naşibihe hebûna mexlûqatên wî, fehmkirina Zatê wî ne mûmkin e, lêbelê wî rêya îdrakkirina eser û hunerê xwe vekiriye û însan jî li sererdê wek “xelîfe” aferandiye. Ew bi şerefdartirînê mexlûqatên xwe kiriye û ew di huwîyeta cewher û kakila kaînatê de bi heyî kiriye. Însan bi heqîqetên di xwe de meknûz, kaînateke biçûk e. Îlm jî bi vê nêrînê pêşî dike ku însan xwe nas bike, xwe bide naskirin, ğaye û emanca hebûna xwe bizane û bide zanîn û li derîyê marîfetullah’îyê bigere.

Hezretê Yûnus Emre jî emanca esilî ya îlmê wiha îfade dike, dibêje:

*Îlm îlm zanîn e*
*Îlm bi xwe zanîn e*
*Ger tu xwe nizanibî*
*Ev zehf xwendine û hew!*
*Nebêje min xwend û min zanî*
*Nebêje min zehf taet kir*
*Ger tu Heq nizanibî*
*Maneya wê ev peyveke ziwa ye.*

Ev qîmet û meqamê taybet ku Xudê Teala ji însanî re lutf kiriye, zehftir di berhemên dilî de îfadeya xwe dîtiye ku ew ji dinyayên fereh ên mûhîtên (derdorên) tesewwufî peyda dibin. Ji şairên sedsala 18’an şiêra meşhûra **Şêx Ğalib** di vê babetê de yek ji wan berheman e ku bi wan qîmetên însan ji wan re layiq in, didin tarîfkirin û ew berî tevên din tê bîra mirovî. Şair, di vê şiêra xwe de ji “însan”î re wiha axaftinê dike, dibêje:

*Di te de heye mexzena esrarê mehebbetê di te de heye*
*Di te de heye madena enwarê futuwwetê di te de heye*

“*Ey kurê însên! Bizane, ew mehfeza (qeydgeha) ku sirrên mehebbetê têde mewcûd in (dil) di te de ye, di te de ye.. Serkehnîya paqijîya aferînê û nûrên kerem û muruwwetê jî di te de ne, di te de ne..*”

*Di te de hene çendîn haletên veşartî û nihanî*
*Marîfet di te de, huner di te de, heqîqet di te de ye*

“*Ji bilî van jî di te de gellek haletên veşartî û nihanî hene; çawa ku marîfet, huner û heqîqet jî di te de ye.*”

*Binêre erd û asîman, dûzex û bihişt di te de ne*
*Helbet erş û kursî û melek, di te de ne, di te de*

“*Heke tu wiha bi diqqet li xwe binêrî tu yê bibînî ku adeta erd, asîman, bihişt û dûzex di te de ne; heta erş, kursî û melek jî helbet di te de ne..*”

*Rind li xwe binêre, tu zubde'ya alemê yî*
*Tu ew reşka çavê hebûnan ew Adem î*

“*Bi vê sedemê ey însan, rind û xweş li hebûna xwe binêre, tu, erê tu, cewher û kakila kaînatê yî; tu ew Adem î ku reşk û bînahîya çavê hebûna ye.*”

Welhasil însan xulase û kurtîya tecellîya zubdeyekê ji heqîqetên îhtîşamdar û mezin ên Rebbê xwe ye ku ji bo vê alema fanî tenezzul kiriye, peya bûye.. Vêca îdraka beşerî hewl dide bi rêya guhastina ji sebebî ji bo mûsebbibî, ji eserê ji bo mûessirî û ji sen'etê ji bo sen'etkarî bigihîje wî û wî fehm bike. Însan bi van mezherîyetên xwe, ji bo bibe kaînateke di tecellîyên curecur de û ji bo bibe Qur'aneke zindî tekane namzed e.

Lêbelê hûrkolîn û lêgerînên îlmî, di babeta bi malûmkirina mechûlên di kaînatê de sewîya ku qezenc kirine û mûweffeqîyeta wan, hê li ser “însan”î nehatine bidestxistin. Sebebê vê jî pêkhatina însanî ya ji “rûh” û “beden”ê ye û di bara rûh de jî -bi teqdîra îlahî- agahîyeke hindik ji mirovan re hatiye dayîn. Bi vê sedemê ye ku însan bi alema hundurîna xwe, -hê jî- mechûlîyeteke ji kaînatê mezintir erz û rapêş dike. Agahîya di bara bedena însanî de bi nezar li du hezar salan berê, digel ku guhertineke pirr mezin û pêşketinê gewre erz û rapêş kiriye jî lêbelê xebatên bi rûhê wî re têkildar seyr û rêveçûneke bi vê re paralel û dehmî taqîb nekirine. Ev keyfîyet ji tekîdkirin û xurtkirina vê heqîqeta Qur'anî îbaret e:

“**Ew di bara rûh de pirsan ji te dikin. Ji wan re bibêje: Rûh,** (cewherek) **ji fermana Rebbê min e. Sade agahîyeke hindik ji we re hatiye dayîn**.”[494]

Herçî kaînat e, ku em jê re “adetullah” yan jî “sunnetullah” dibêjin, ew jî bi awayekî sîstemdar heta tu bibêjî bes bi qaîdeyên gîrîft û mûkemmel

494. Îsra, 17/85.

hatiye hûnandin. Ev jî ew qanûnên bi hikmet ên alemên fîzîk û metafîzîkê ne ku di heman demê de îlm û qudreta bêdawîya Cenabê Heq şanî didin. Taybetmendîyên neguhêrbar û hevbeş di van de her yek ji wan ayetek û delîl e, şehde dide ku yê ev qanûn danîne hebûneke tek û yek e û ev berhema bi navê kaînatê, ji ber destekî tenê derhatiye..

Îslam însanî bang dike ji bo ew çawa ayetên Qur’anê dixwîne, aynî wisan van tecellîyên di pirtûka kaînatê de jî bibîne. Lewra Xudê Teala bi wasîteya wan hikmet, îbret û sirrên ku di mexlûqatên xwe de aferandine, xwe bi bendeyên xwe dide naskirin. Xudê Teala di ayetên pîroz de wiha dibêje:

**“Ma ew li erdê nanêrin? Me, têde ji her cotên rind çendîn giya hêşîn kirine!”**[495]

**“De li berhemên rehma Xuda binêre; ew erdê di piştî mirina wê de çawa vedijîne?! Bêguman ewê eynî wisan miriyan jî vejîne. Ew, li ser kirina her tiştî kare ye**.”[496]

**“Her ew e, yê ku heft tebeq asîman bi hev re ahengsaz aferandine. Tu, di aferandina Rehman de ti nakokî û bênîzamîyekê nebînî. De ka çavê xwe vegerîne û binêre, ma tu, derz û kêmasiyekê dibînî? Piştre du caran çavê xwe vegerîne û meyzîne, çavê te, ji ber kêmasiya ku lê geriyaye û nedîtiye dê reben û westiyayî li te vegere!”**[497]

**“Ma ew li hêştirê** (devehê) **nanêrin ka ew çawa hatiye aferandin?! Ma ew li asîmanî nanêrin ka ew çawa bêstûn hatiye bilindkirin?! Ma ew li çiyayan nanêrin ka ew çawa di erdê de hatine çikandin?! Ma ew li erdê nanêrin ka ew ji bo jîyana wan çawa hatiye raxistin?!”**[498]

**“Ma ew li asîmanê ser xwe re nanêrin ku me ew çawa bêstûn ava kiriye, me ew bi stêran xemilandiye û di wî de ti derz û terkek jî nîn e**.”[499]

Heqîqeteke eşkere ye ku di vê kaînata bêserî û bêbinî de nîzam û ahengeke wisan mûkemmel heye ku aqilan dixe heyretê û bêçaretîyê. Ev nîzam û aheng, ji dema ku kaînat hatiye aferandin ve heta tu bibêjî bes di nav hevkêşîya ebedî ya hesabên mûkemmel, hûr û hessas de hîç şaş nabe û

495. Şûera, 26/7.
496. Rûm, 30/50.
497. Mulk,67/3-4.
498. Ğaşîye, 88/17-20
499. Qaf, 50/6.

wisan berdewam dike û diçe. Ji van tevan malûm e ku heke di eksena dinyayê de meyleke 23,5 pileyî nebûya, mewsim û demsal nedihatin meydanê. Di vê rewşê de ew deverên ku li wan havîn e, ebedî li wan havîn dibû û ew deverên ku li wan zivistan e jî ebedî li wan havîn dibû. Yan jî heke mesafe di navbera taverojê û dinyaya me de piçeke din zêde bûya, her dever bi cemseran werdigerîyan û dibûn qutub. Yan jî ew ji mesafeya vêga mewcûd piçeke bêhtir nêzîk bûya, her tişt dişewitî û diperitî. Ev keyfîyet û yên wekî wê vê rastîyê li holê datîne ku ew bi awayekî wisan hatiye bi bername û programkirin ku heyatê ji bo hemû cismên semawî mûmkin bike.

Elhasil çavê ku bibîne wê îdrak bike ku ev dinya, li hemberî seltenet û tezîma îlahî sade yek ji wan toza ye ku ew li fezayê bi mîlyonan, bi trlîyonan sobaberîyê dikin. Çîya, deşt, okyanûs û însan jî di nav vê tozê de ne. Ha însan bi vê bêçaretîya xwe, ji derveya evdînîya xwe wekî din ew sade ji hîçekê îbaret e!..

Cenabê Heq, bi awayekî ji şanê xwe re layiq însan bi mekanîzmayeke hesabê ya heta bi pileya dawîyê mûkemmel, gîrîft (di nav hev de) û zehf hûr aferandine. Bi pêşveçûna îlmê re wê qudret û ezameta wî ya di erd û asîmanan de hê bêhtir were fehmkirin. Xudê Teala di ayeta pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

“**Gerek di asoyan** (alema derveyî) **de be, gerek jî di nefsên** (alema hundurîna) **wan bi xwe de be, emê her ji nêzîk ve ayetên xwe ji wan re şanî bidin. Di paşîyê de bêguman wê ji wan re bi eşkerehî derkeve holê ku ew** (Qur’an) **heq e. Ma bi heqî şahidbûna Rebbê te ji bo her tiştî, ji te re ne kafî ye?**” [500]

Bi rastî hûrkolîn û lêgerîn di bara kaînatê de çi qeder bipêşve diçin, ew qeder hûrahî û ziravîyên Qur’ana Pîroz, piçekî hê bêhtir bi awayekî berfereh têne îdrakkirin. Lewra her keşfeke nû ya îlmên fennî, çawa Qur’anê tesdîq dikin, aynî wisan ev keşf, carinan jî wan ayetên wê bi tehlîl û vekirinê digihînin ku fehmkirina wan zehmet e.

Çawa ku zanayên bi însaf ên qadên wekî embrîyolojî, anatomî û bîyolojîyê li hemberî wan ayetên Qur’anê ku safha û qunağên aferîna însanî îşaret dikin, ketine heyretan û naçar mane ku heqîqetê teslîm bikin. Di Qur’ana Pîroz de di babeta pêkhatina însanî ya di malzaroka makê de wiha tê gotin:

500. Fussîlet, 41/53.

“**Sûnd be ku me mirov, ji encamekê, ji heriyê** ( hatiye palandin û deranîn) **aferandiye. Piştre me ew, kiriye nutfe; dilopa ava meniyê û ew di malzarokê; cihekî ewle û sağlem de danîye. Piştre me avedilopa meniyê aniye halê xwîneke hişk** (hêka fetrîmkirî); **peyre me xwîna hişk kiriye pişikek goşt; me ev pişika goştî kiriye hestî, me ew hestî bi goştî nixumandiye, paşê me ew wek mexlûqekî nû daye pêkanîn. Xuda pirr bilind e, sipehîtirînê aferîneran e!** ” [501,502]

Qur’ana Pîroz ne pirtûkeke ku sade bi zanistên wekî astronomî, botanîk, bîyolojî, jeolojî û yên wekî van taybet e. Ji ber ku ew xwedî sifetê cewamîu’l-kelîm[503] (komkara peyvan) e, ew ji wezîfeyên tefsîlkirina zanist û teknîkê bêrî ye. Lêbelê her keşfa nû’ya di qada îlm û teknolojîyê de, ne bi cîhetê seraheta Qur’anê, lê bi rêya îşaretkirî ya hikmet, îbret û heqîqetên ku wê behsa wan kiriye, ew piştevanîyê li wê keşfa nû dike. Her ku roj derbas dibin ew (keşfên nû) ji bo hê bêhtir eşkerebûna mesajên îlahî xizmetê dikin. Alema ku van heqîqetan bi awayekî sarîhtirîn û bitefsîlat têde cih girtine jî kaînat e. Sebebê vê, ew rastîyên ku bi awayekî cewherî û meknûz di însanî de mewcûd in,

501. Mûmînûn, 23/12-14.
502. Ev ayetên di Qur’ana Pîroz de di bara qunağên aferîna însanî de Prof. Dr. Mar - hall Conson ê ku bi lêkolînên xwe yên di qada anatomîyê de nav û deng dayî, xistine heyretê. Nemaze ew malûmatên ku di ayeta pîroz de di bara taybetmendîyên “Mûdğa”yê de hatine dayîn heta tu bibêjî bes balkêş in:
“**Mûdğa ya ku pişikek goştê cûtî.**.” Tam li gorî bi rêzkirina diranan hatine pêkanîn. Wekî ku li ser pişikek goştê hatî cûtin dîmena şopa diranan maye… Temamê wê santîmetreyek e (adeta ji bo cûtinekê ye).
Di Mûdğayê de hemû taybetmendîyên însanî hene. Lêbelê hinek ji wan faal in, hinek ji wan jî hê neketine faalîyetê! Tib, ji bo vegotina vê rewşê tabîrekê nabîne. Heke ew bibêje; endam kar dikin, hinek ji wan hene ku kar nakin; heke ew bibêje; kar nakin, hinek hene ku kar dikin. Haleveku Qur’anê ev bi “ **pişikek goştê cûtinê** (ne ku wek endamên tam lê bi awayê ku hinek hatine pêkanîn) **dîyarkirî nediyarkirî**” (Hecc, 21/5) tewsîf kiriye, bi tabîreke ku hemû malûmatên bi Mûdğayê re têkildar îhtîwa dike, berî sedsalan ji vê heqîqetê xeber daye.
Prof. Marshall ê ku pêşî Qur’ana Pîroz bi pêşekî red dikir, piştre naçar ma ku wê bi temamî qebûl bike. Wî nikarîye li hemberî van heqîqetan nebêje; “erê, ev Qur’an li ber ehlê îlmê ronahîyê werdigre, ew ji terefê Xuda ve hatiye nazilkirin. Dema zemanê wê were, heqîqetên wê yek bi yek wiha werin vekirin û xuya bibin. Wekî ku Xuda ferman kiriye: Wê ev ayet «(Ji wan heqîqetên bêjimar ên ku Qur’anê dane zanîn) **Ji bo her xeberekê wextekî wê heye ku wê têde were bicihanîn. Di nêzîk de hûnê jî heqîqetê zanibin.**» (Enam, 6/67) tecellî bike.” (Binêrin. Ebdûlmecîd Zîndanî, Di Qur’anê de mûcîzeyên îlmî, rûp. 31-36.)
503. **Cewamîu’l-kelîm**: Bi peyvên hindikk îfadekirina maneyên zehf e.

digel ku bi awayekî hê vekirîtir di Qur'anê de cih girtine jî dîsa gellek hukm hê nixumandî mane.

Keyfîyeta wecîz-bûnîya Qur'anê bi sebeb di xwe de hewandina wê ya wan heqîqetên bêdawî ye. Lewra heke ew heqîqetên ku bi xebatên zanistî derketine holê, bi awayekî vekirî û bitefsîlat di Qur'anê de cih girtibûna, du mehzûr ji vê diwelidîn:

**a.** Hingê însan bi sewîya zanistîya serdema ku têde dijîyan di qebûlkirina wan heqîqetan de diketin zorê û ew bi rêya înkarkirinê ve dipekîn. Bi îcaba rahm û dilovanîya Xuda, wî ev heqîqet bi perdekirineke ku bi zemanî re werin fehmkirin ji bendeyên xwe re lutf kirine.

**b.** Heke hemû heqîqetan bi awayekî vekirî û bi kitekiteyî di Qur'ana Pîroz de cih girtibûna, hingê zehf zêde naveroka wê fereh dibû -ji xwe tu ji mûhafezekirin û jibîrkirina wê behs neke- ji vî serî heta bi wî serî xwendina wê û xetimkirina wê jî bêîmkan dibû. Lewra Cenabê Heq di ayetên pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

"(Ya Resûlê min!) **Me, ev Qur'an, wek eşkerekara vekirî ya her tiştî û ji bo mislimanan jî wek hîdayet, rahm û mizgînî peyapey ji te re şandiye**."[504]

"..**Ter û hişk çi hebin tev di kitêbeke tam eşkere de ne**."[505] Cenabê Heq bi van ayetan eşkere kiriye ku bi esasê cewhera wan hemû heqîqetên li alemê di Qur'ana Pîroz de îşaret bi wan hatiye kirin:

"**Ma ew hûr û kûr li ser Qur'anê nafikrin? Yan jî li ser qelban** (!) **kilîd hene?**"[506] Cenabê Heq bi vê ayetê bendeyên xwe ji bo tefekkura rasteqîneya keş û hewaya Qur'anê bang kirine.

Qur'ana Pîroz, -heke bi tabîra wê bi xwe vegotin pêwîst bike- "**furqan**"-ek e. Wate Qur'ana Pîroz pirtûkeke mûbarek e ku ew ferqa di navbera hîdayet û dalaletê, xêr û şerê û nûr û zulmetê de li holê datîne û cudahîya di navbera van de dide tebaruz kirin. Naxwe ewên ku ji wê nêzîk bibin, ew bi qeder nesîb, nîyet û îstîdada wan encamê dide wan. Dema însan bi qelbekî îfsad nebûyî ji

504. Nehl, 16/89.
505. Enam, 6/59.
506. Nîsa, 4/82.

wê nêzîk bibe, bi ayetê sabit e ku bi waqifbûna li ser burhan û delîlên nû, îman zêde bûye. Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de dibêje:

"**Mûmînên rastî ew kes in ku dema Xuda tê zikrin qelbên wan ji tirsa dilerizin, dema ayetên Xuda ji wan re têne xwendin îmana wan zêdetir dibe û ew pişta xwe sade bi Rebbê xwe dispêrin**." [507]

Li alîyê din ew mirovên ku bi pêşamadehî xirab û neyênî li Qur'ana Pîroz dinêrin jî dalaleta/rêşaşîya wan zêde dibe. Lewra dema mirov bi nêrîna mehebbetê li tiştekî binêre, hemû sipehîtîyên di wî de li ber wî hê bêhtir eşkere dibin; bi berevajî vê, dema mirov bi pêşamadehî bi nêrîna neçê û neyênî li tiştekî binêre, hîç ti mezîyetek ji mezîyetên wî ji mirovî re xuya nabe. Nêrîna van aynî wekî nêrîna Ebûcehl li Îslamê ye. Ev mirovên wiha (çavxirab) çi qeder Qur'ana Pîroz bixwînin ji ber ku ew nagihîjin mezinatîya wê, di nav pêlên nekarînê de hissên wan di rêya kufr û îlhadê de li ser hev ditewin û zêdetir dibin. Halê ğeyz, kîn, hêrs û harbûnîya wan dişibihe hêrs û harbûnîya wan kesên ku ji terefê rikeberê xwe yê ku jê hez nakin ve hatine meğlûbkirin e. Di encamê de ew cezayê ku jê re mûsteheq dibin jî zêde dibe. Ayetên pîroz di vê babetê de ferman dikin, wiha dibêjin:

"**Em, Qur'anake wisan peya û nazil dikin ku** (ayetên wê) **ji bo mûmînan şîfa û rahm in; herçî zalim in, ew xusrana wan zêde dike..**"[508]

"**.. Bibêje: Ew** (Qur'an), **ji bo mirovên ku îman anîne hîdayet û şîfayek e. Herçî ew mirovên ku îman neanîne jî, di guhên wan de kerrîtîyek heye** (nahêle ew heqîqetê bibihîzin) **û ji ber vê ew** (Qur'an) **ji wan re girtî ye, nayê fehmkirin. Ew, her wekî wan** (mirovan) **e ku ji dûr ve têne bangkirin.**" [509]

Wekî ku em dibînin Qur'an ji bo mûtteqîyan rêbera hîdayetê ye. Di hemberê vê şîfabûnîya wê ji bo mûtteqîyan de bi eşkerekirina îlahî sabit dibe; ew ji bo kafirên ku bi înadê li hemberî wê taveroja heqîqetê çavên xwe miç dikin û digrin jî ew kufr û xusrana wan zêde dike.

Dîsa di bara kesên wiha de di ayeta pîroz de wiha hatiye gotin:

507. Enfal, 8/2.
508. Îsra, 17/82.
509. Fussîlet, 41/44.

“(Ya Hebîbê min! Ew mirovên ku li hemberî te radibin) **Ma hîç li ser erdê negerîyane?** (Heke ew bi nêrîna îbretê gerîyabûna) **ji wan re qelb dibûn ku ew pê bifikrin û ji wan re guh dibûn ku ew pê bibihîzin! Lêbelê rastî ev e ku çav kor nabin; lêbelê ew qelbên di nav singan de kor dibin.”**[510]

Wekî ku me li jorê îfade kir kaînat, menzûmeyeke heyberan e ku bi terkîb û pêkhatina tecellîya sifetên îlahî hatiye wicûdê. Qur’ana Pîroz jî în‘îkas û xuyabûnîya wan heqîqetên mewcûd û meknûza di vê menzûmeyê de ya bi awayê kelamî ye. Însan jî cewhera van herduyan, xulaseya wan û cure tuxmê wan e, di wî de nesîbek ji hemû tecellîyên hevdij -hindik yan jî zehf- mewcûd e.

❀

Cenabê Heq, kaînat û tiştên di navê de bi terkîb û pêkhatina tecellîya esma’yên îlahî yên xwe aferandiye. Tecellîyên kamil ên van sifetan sade ji bo kurê însanî bi nesîb kirine. Ha ev e, sebebê ku kurê însanî jî bi “eşrefê mexlûqat” (bi şereftirînê aferîndeyan) kiriye. Kurê însan jî bi qeder qabilîyeta xwe bi “camîu’l-ezdad”, (komkarê hevdijan) yanî sifetên hevdij mûttesif e. Ew dikene-digrî, hez dike, nefret dike û hwd. Yanî di hebûna însanî de sifetê rahmê heye; qahir, sifetê hêrs û ğezebê jî heye.. Ji ber vê ye ku lutf û kerem jî dikare ji însanî xuya bibe, agirê kîn û hiddetê jî dikare di însanî de tezahur bibe. Hestên hilm û xeşmê di wî de daîmî di halê med-cezirê de ne.

Welhasil însan, ji gellek sifetên Xuda nesîbdar bûye. Lêbelê derece û pileya tecellîya van sifetan ji însanekî ji bo însanekî din ferqdarîyeke bêdawî erz dike. Ji yê biçûktirîn heta bi yê mezintirîn di nesîb wergirtina ji vê tecellîyê de bi qedemebûnîya beşerî tîne wicûdê.

Mesela di her însanî de bi rêjeyeke diyarkirî misoger tecellîyeke ji sifetên “**Rahman**” yan jî “**Rahîm**” ê Xuda heye. Lêbelê ev tecellî, ji însanekî ji bo însanekî dîger tim û daîm guhertin û bi pilebûnîyê erz dike. Hinek însan hene ku sifetê “Rahman” û “Rahîm” sade di xwe de, yan jî bi zehfî di ferdên nêzîk ên malbata xwe û derdora xwe ya hevalan de dide xuyakirin û tecellîkirin. Hinek însan jî hene ku van sifetan di xwe de ji bo temamê mirovan şamil dikin û heta ji bo heywanan bi xwe jî teşmîl dikin, didin tecellîkirin. Mesela em dikarin ji bo tecellîya kamila sifetê “Rahman” van hedîsan mîsal şanî bidin:

Dema Bayezîdê Bîstamî ji deverekê ji bo devereke dîger seyahet dikir, ew li bin darekê radiweste û xwarina xwe dixwe. Dema ew xwarina xwe

510. Hecc, 22/46.

temam dike û li ser rêya xwe berdewam dike. Piştî ew zehf zêde rê qut dike û dûr diçe, li ser torbê xwe mîroyekê dibîne. Hezret dibêje:

“-Min ev mexlûqa Xuda ji welatê wê cuda kir.” Ew bi ser şopa xwe de bi şûn xwe de vedigere û dubare wê mîroyê li bin wê darê datîne û bi ser rêya xwe ve berdewam dike.

Ha nimûneyeke dîgera merhemetê ku kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê jî ev e:

Serî-yê Seqatî -quddîse sirruh- dema di dersa xwe de ji bo şagirtê xwe vê hedîsa şerîf: “*Ew kesê ku bi derdê mûmînan hevderd nebe, ne ji wan e*.”[511] îzah dike, şagirtekî wî bi kelecan dikeve hundur û jê re dibêje:

“-Seydayê min! Taxa we şewitî, bû xwelî. Sade mala we xilas bû.”

Serî-yê Seqatî bi keyfxweşî dibêje: “Elhemdulillah.”

Ew piştî sih salan ji dostekî xwe re wiha dibêje:

“-Wê demê min bi gotina «el-hemdulillah» çendan ji bo demeke kurt be jî ez xwe tenê fikirî bûm û ez ji îzdîraba yên ku felaket li wan ketî dûr mabûm. Ha ev sih sal in ez di nav tobeya wî halê xwe de me.”

Ji lewma rahm û mehebbet wek nuqteyeke temerkuzê ji kî û ji kuderê destpê kiribe, bila destpê kiribe, heke di îstîqameta ji bo şamilbûna wan li ser hemû mexlûqatan de ji bo pêşketinekê bibe mezher, hingê ew xwediyê xwe dike mûmînê kamil, yan jî bi tabîreke din ew xwediyê xwe dike aşiqê heqîqî. Heke çi qeder eşqê, wekî çîçekekê zîğ dide bi temayul û meclûbîyeta hezkirîyên mûayyen destpê kiribe jî lê dema ew ji bo Xaliq bi ber temamê mexlûqatan ve were bişamilkirin, hingê wê berê xwe daye ser vê ku ew bibe “eşq”a rastî.

Merhemet û mehebbet ku jê re “**îşqa îlahî**” tê gotin, heta elaqeya wê bi ber asoyeke ku tixûbên wê bêsînor ve neyê tehfdan, ew merhemet û mehebbet, di sûretê îşqê de nayê îfadekirin. Belkû ew bi îzafe li ser şeklên îbtîdaîyên xwe, di safha û xwe ya nedurust de dimîne ku jê re “**îşqa mecazî**” tê gotin.

Terkîb û pêkhatinên tecellîya esma’yên îlahî, bi qeder hijmara însanî mîzacên ferqdar û cuda anîne husûlê. Çawa ew encama ku bi tevlîhevkirina boyaxên curecur hasil dibe, heke di îstîqameta rengê ku bi zêde’yî tê îfadeki-

511. Hakim, Mûstedrek, IV, 352; Heysemî, Mecmau’z-Zewaîd, I, 87.

rin bibe, aynî wekî wê terkîba tecellîyên îsman jî tecellîya ğalib di kîjan sifetî de be, mûhtewayeke ji wî nêzîk erz û rapêş dike. Ev keyfîyet, wekî ku ji bo rê ji mîzaca guncaw re were girtin û ji bo hê bi hêsanîtir tereqqî were dabînkirin îcaba curecurbûnîya terîqetan e, lizûmîya metoda perwerdeyeke ferqdar û cuda cuda ji bo terbîya her mirîdî re jî li holê datîne.

Bi rastî mîzac û tebîat jî bi wesfên bingehîn û serwer ên xwe dikarin bi tesnîfeke gelemperî werin sinifandin. Aynî wekî tesnîfa aferînde û mexlûqatan, çawa ku ew ji bo sinif û kategorîyên cuda û ferqdar têne veqetandin; însan, heywan, nebat û bêcanan jî wisan e.. Lêbelê dibe ku ferqa di biçûktirîn û mezintirîna sifetekî ji sifetan de di navbera du mexlûqên di heman kategorî û sinifî bi xwe de jî ji ferqa di navbera du mexlûqên ji du kategorî û sinifên cuda zêdetir û mezintir bibe. Mesela mesafe û bi qedemebûnî di navbera însanê di meqamê nizmtirîn û însanê di dereceya bilindtirîn de ji biqedemebûnîya di navbera heywanek û însanekî de hê bariztir e. Unsura ku ev qeder ferq anîye holê, ferqa mûezzama di tecellîyan de ye ku ew ji bo terkîbê/pêkhatinê medar e.. Ev, wekî ku di sifetên mûsbet de wisan e, di sifetên menfî de jî tê mûşahedekirin. Ferqeke serhejîn di navbera mirovên di jêrtirîna qedemeya zulimê yan jî kufrê de û di navbera zalimê har, yan jî kafirê di kufra xwe de hosta de heye..

Kafirekî di qedemeya jêrtirîn de ku têde sifetê “Mûdill” ğalib bûye, ew di nav tixûbên jîyana xwe de wê bi awayekî sefîh û gêjane dijî. Îmana mûmînan wî elaqedar nake. Lêbelê wekî ku di Ebûleheb û yên wekî wî de wisa ye, çi qeder dereceya kufrê dijwar dibe, ev hal wî kesî heta bi têkoşîn-kirina li dijî Pêğember û salihan jî dibe. Zulim jî aynî wekî vê kufrê ye. Nêçîrvanekî ku ne ji bo xurekê, lêbelê ji bo zewqê nêçîrê dike, di navbera zemanî de qelbê wî hişk dibe û zulima wî, heta bi sadîzmê diçe. Di tarîxê de kralên zalim ên Romayê Îsewîyên pêşîn di rekihan de bi şêran didane perçekirin û bi qehqehe jî ew temaşe dikirin, di Qur’ana Pîroz de ji bo wan zalimên dilhişk nimûne wiha ye:

بَلْ هُمْ أَضَلُّ Yanî “**Ew ji heywanan jî hê nizmtirîn in**.”[512]

❀

Gerek di tiştên tebîî de, gerek jî di însanî de ew curecurehîya bêdawî ya di navbera tecellîyan de ku ji bo terkîb û pêkhatinê bûye medar, vê rastîyê

512. Eraf, 7/179.

li holê datîne ku “ferqdarîtî”/newekhevbûnî yek ji qanûnên bingehîn ên vê alemê ye. Ne temamê alemê, lêbelê ğeyret û hewldan ji bo wekhevkirina du heyberan jî ji îştîğala bi abesê pê ve ne tiştekî din e. Lewra bi mûcibê tecellîyên bêdawî yên îsman, li kaînatê heyberên cêwî nîn in. Çawa ku bi maddeya xwe û maneya xwe, yanî bi maneya xwe ya tam însanekî cêwî nîn e; aynî wisan bi hijmara çiqil, pel û fêkîyên xwe dareke cêwî jî nîn e.

Dema em bikarin Xuda, însan û kaînatê ji vê perspektîfê (ji asoya vê dîtinnêrînê) fehm bikin, hingê emê karibin di xwe de hevdijan tehemmul bikin û emê ji vê tehemmula hevdijan jî bigihin vê kemalê ku karibin bi mirovan û hevdijîyên wan re bi merhemet û mûsamehayê serdêrî û mûamele bikin.. Ha tesewwuf, ew kemal e ku ewên nesîbê xwe ji wê negirtine û bi umûmîyet bi keyfîyeta hêrsbûna wan re jî dikare bi mehebbet û mûsamehayeke wiha li wan binêre. Ev fezîletek e ku waqifbûna ji hikmeta vê dîmena zahirî ew bi însanî daye qezenckirin.

Ev fezîlet û kemal jî, çendîn mezîyetan bi me didin qezenckirin. Berî her tiştî ew bi me didin dabînkirin ku em ne bi hêrs û ğezebê li gunehkarî binêrin. Lêbelê em bi hissa berketin û dilpê-şewitinê lê binêrin. Her wiha em mehrûmîyeta mirovê kafir jî bifikrin û pê re bi nermahî û umîd mûamele bikin. Ew fezîlet û kemal, di babeta teblîğê de jî hêz û cesaretê bi me didin qezenckirin. Ew vê hissê bi me didin dabînkirin ku em gunehkaran û kafiran her wekî kor û nebînan ji bo îqaz û îrşadê hewcedar, bibînin. Ew vê çewtî û bêmentiqîya wan mirovan bi me didin fehmkirin ku dema ew çûkekî perşikestî dibînin dilê wam pê dişewite, lêbelê dema ew gunehkarekî dibînin li hemberî wî jî hêrs dibin. Ev fezîlet û kemal dikin ku hestên mehebbet û merhemeta me wekî şelaleyan dikişin da ku ji peywendîyên lêzimî û xinamîtîyê derbas bibin û ji bo pêşketina di îstîqameta îhatekirina hemû însanîyetê de bi mezher bibin. Di civakeke ji însanên wiha pêkhatî de cînayet û pevçûn, cihê xwe ji hevkarîyên şefqetkarane re terk dikin. Hingê hijmara kesên salih ên ku pirranîya wan di mazî û rabûrîyê de maye, zêde dibe. Ew Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo xwe wek emsal û nimûne digrin û “exlaqê hemîde”yê ku van salihan di xwe de bicih kirine jî heta mûmkin bibe di navbera ferdên cemîyetê de bi gelemper dibe. Hingê hemû mûamele li hemberî însanên gunehkar û qusûrdar kemaleke nimûneyî qezenc dike wekî ku di vê mîsala berraq de hatiye dîtin.

Ji navbera şêxên Belxê yek ji sîmayên meşhûr di tarîxa tesewwufê de Şêx Hatemê Esamm -quddîse sirruh- e. Ew şexsîyeteke mûstesna ye ku ji bo vê serfiraz û mûweffeq bûye; wî kariye bi terbîya manewî ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nefsa xwe û rûhê xwe zirav bike û exlaqê xwe ji bo mertebeyeke mezin bilind bike.. Digel ku hissa bihîstinê ya Hezretê Pîr ğayet sihhetdar bû jî dîsa meşhûrbûna wî bi leqeba “Esamm” yanî “kerr” xwe bi bûyereke pirr biîbret dispêre:

Rojekê jineke derdmend tê cemê ji bo daxwazeke xwe ji wî bike. Wê tam destpê kiribû ku merama xwe jê re vebêje, ji wê jinê bi awayekî ğeyrê îxtîyarî û bêhemdî dengekî mekroh jê sadir bû. Ew jin wekî mûmekî helîya, adeta mehû bû. Hezretê Hatem jî ji bo ew jin mehcûb nebe û di rewşeke zehmet û şermok de nemîne, wekî ku wî hîç tiştek nebihîstibe, wisan xwe li sehnekirinê danî, destê xwe bire ber guhê xwe û jê re got:

“Xweha min, guhê min zehmet dibihîze; biçekî bi dengê bilind bibêje! Me nebihîst..”

Bi vî awayî wê jinê hizr pê kir ku qusûra wê veşartî maye û ew jî rehet bû. Wê destpê kir bi dengê bilind merama xwe jê re vegot.

Li gorî rîwayetê di piştî vê bûyerê de Hezretê Hatem, ji bo ew jin nebihîze û neyê êşandin, heta ew jin piştre mir jî wî tam pazdeh salan wekî ku ew kerr be, hereket kir. Bi vê mûnasebetê jî ew bi leqeba “**Hatemê Esamm**” yanî “**Hatemê Kerr**” meşhûr bû.

Ziravîya berraq û sewîya exlaqî di vê mîsalê de ku Hatemê Esamm ew nîşan daye, sade bi hînbûna wê malûmatê ji kitêban û tetbîqkirina wê di jîyanê de helbet ne mûmkin e. Ev nezaket û fezîleta ku Hezretê Hatem şanî daye, mirov dikare bi vê îzah bike ku wî hissa xwe ji sifetê “**Settaru’l-ûyûb**” yanî “ewê ku eyban diveşêre” yê Cenabê Heq wergirtiye û kariye wî bi exlaq wergerîne.. Bizavên wiha, bi taybetî di tesewwufê de bi awayê “**exlaqbûna bi exlaqê Xuda**” têne îfadekirin.

Li ser vî esasî dostên rastî yên Xuda, di tecellîyên sifetên mezin ên Heq Teala de wek mûsteğreq îradeyên xwe ji îradeya wî re ram û desteber dikin. Ew baş dizanin ku her mirada wî tam di cihê xwe de ye û ew derdorên xwe jî li ser vê rê bi îstîqamet dikin. Di vê meyanê de ev mîsal çi qeder hikmetdar e:

Rojekê Hezretê Şêx Sunbul Sînan ji mirîdên xwe re got:

“-Kurên di min! Fereza heke Cenabê Heq sewq û îdareya vê kaînatê bide we, hûnê çi bikin?”

Her mirîdekî tiştek got.

Hinekan ji wan got:

“-Ezê hemû kafiran tine bikim!”

Hinekan ji wan got:

“-Ezê hemû meyxweran ji holê rakim!”

Hinekan ji wan jî got:

“-Ez çixarevexwerekî tenê jî nahêlim!”

Bersivên bi vî awayî dirêj dan û çûn. Yek ji aliman ku wê demê di navbera mirîdan de bû jî Mûslihiddîn Efendî bû. Wî hîç ti bersivek neda û ew huş dibû. Hezretê Şêx, vê carê berê xwe da wî û jê pirs kir, jê re got:

“-Kurê min! Te çi dikir?”

Mûslihiddîn Efendî pirr-edeb wiha bersiv da:

“-Seydayê min! Haşa qey di îrade û îdareya Cenabê Heq de nuqsanîyek heye heta ku ez tiştekî din bifikrim û bixwazim? Bersiva min, sade ji vê gotinê îbaret e ku min her tişt aynî wiha dida dewamkirin.”

Hezretê Şêx Sunbul Sînan ji vê bersivê memnûn bûbû û got:

“-Ha vêga kar merkeza xwe dît!”

Ji wê rojê û bi şûn de Mûslihiddîn Efendî wek “Merkez Efendî” hate bibîranîn û di piştî Hezretê Seyda Sunbul Sînan de emanetê manewî ji wî re hate dayîn.

Hezretê Îbrahîm Heqqî Erzûrûmî jî adeta wekî ku vî halê xulase bike, wezîfe girtina xwe ji bo Heq wiha tîne zimên:

*Hemû karên Wî bi ser karên ğeyrê wî dikevin,*
*Ew ji hev û din re layiq in,*
*Ew çi bike, rast e,*
*Em bibînin wê Mewlayê me çi bike,*
*Ew çi bike, wî sipehî dike!*

Welhasil gihiştin û naîlbûna ji bo van halên sipehî û bilind, di cewherê de bi lixwekirina tecellîyên sifetên Xuda mûmkin e.. Di rewşeke berevajî de ferqa me ji kağezekê namîne ku xebera wê ji nivîsa ku li serê hatiye nivîsîn û ji wêne û resimên ku li serê hatine çêkirin, nîn e. Hezretê Mewlana çi xweş dibêje:

"*Heke tu wêneyê zilamekî ğemgîn li ser kağezekê çêkî, ew resim û kağez, ji ğemê jî, ji keyfxweşîyê jî bê xeber e*."

"*Resim di dîmenê de ğemgîn e, lêbelê resim jî kağez jî xebera wan ji ğemê nîn e. Resimê zilamekî ku dikene jî xebera wî ji kenê wî nîn e*."

Ji lewma em ji ber şerefa însan bûna xwe çi qeder ji bo tecellîyên sifetê îlahî bibin mezher bila em bibin, heke em ji vê bêxeber bin, emê bişibihin wê kağez û wî resimê ripûreş. Ji lewma divê em hemû sifetên fanî û îzafî yên ku bi sebeb îmtîhanê ji me re hatine dayîn di tecellîya sifetên bilind ên Cenabê Heqq de bihelînin. Em dizanin ku mûhtewaya hemû sifetên bilind ên Zatê Wî ferehî û bêdawîtîyeke wisan rapêş û erz dikin ku ew nakevin ti tarîf û pênaseyan. Ew hemû jî ezelî û ebedî ne. Ew hemû di Wî de mûtleq in û bi taybetmendîyeke bêdawî mûttesif in. Yanî hîç ti sifetekî Wî tixûb û sahilê wan nîn e. Li ser vî esasî îlmê wî, kelamê wî, qudreta wî, tekwîna wî û hemû wesfên dîger ên wî bi van mahîyetên xwe ji her cure teşbîh û îzahatan mûnezzeh in. Em û taybetmendîyên dinyaya me jî hem mehdûd in, hem jî fanî ne. Em û dinyaya xwe ji zilla zewalê îbaret in. Kurê însan bi halê xwe hê bi maneya kamil xwe nas nekiriye, helbet ne mûmkin e, ew bi awayekî layiq sifetên aîdê Cenabê Heq, yanî sifetên wî yên di mahîyeta taybet de îdrak bike. Çawa ku em nikarin heqîqet û mahîyeta Zatê Xudê Teala îdrak bikin, aynî wisan em nikarin bi maneyeke kamil heqîqet û mahîyeta sifetên Wî jî îdrak bikin.

Ew kesên ku ji vê heqîqetê waqif dibin û hemû sifetên wekî dîtin, bihîstin, fehmkirin, axaftin û yên wekî van di xwe de wek tecellîyeke besît ji sifetên Xudê Teala îdrak dikin, di keş û hewaya hîçîtîyê de bi feyza marîfetê dijîn û ew di nav çêja kûra îmana rastî de tine dibin û dibêjin:

**La mewcûd e îlla huwe**!

"**Ji Xuda pê ve hebûnek nîn e**."

Dilê wan û mejîyê wan di zirweya îrfanê de ye û ew bi hikmeta:

"**Ya Reb! Tu çawa bî, tu wisan î!**" têne stran.

Bi vî awayî ew bi qelbekî selîmê ji her cure wehm û wesweseyan azade digihin Rebbê xwe û di deftera welîyan de têne nivîsîn.

Derwêşekî ji Bayezîdê Bîstamî pirs kir:

"-Seydayê min, mezintirîn navên Xuda kîjan in?"

Bayezîd bersiva wî wiha da:

"-Kurê min! Ma kîjan navê Xudê Teala biçûk e?! Ğafil nebe; hemû navên Xuda mezin in. Heke tu ji Wî dixwazî ku daxwaza te qebûl bike, li parastina dilê xwe ya ji îşğala masîwa binêre! Navê Wî di qelbên ğafil de tecellî nake. Lêbelê Xudê Teala her an û gavê bi çendîn navên xwe li qelbê ku bi nûra wî ava be, dinêre!"

Çawa di gellek ayetan de sifetê «mezin» ji bo navê Xuda tê dayîn:

Di ayetê de hatiye gotin: "**Navê mezinê Rebbê xwe tesbîh bike!**"[513]

Dema Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nimêj dikir, di rikûê de «subhane Rebbîye'l-Ezîm» (Ez Rebbê xwe yê xwediyê ezametê ji hemû sifetên nuqsanîyê tenzîh û tesbîh dikim) digot. Di sicûdê de jî «subhane Rebbîye'l-'ela» (Ez Rebbê xwe yê bilindê bilindan ji hemû sifetên nuqsanîyê tenzîh û tesbîh dikim) digot û ev ferman dianî cih..

**Xudayê min! Bi hurmeta navên sipehîtirîn, bi taybetî jî bi hurmeta navê xas ê te, parekê ji sirrên marîfetullah û mehebbetullah ji me re bike nesîb!**

**Amîn!..**

513. Waqîa, 56/96.

Însanê kamil ê ku digihe marîfetullahîyê, ji ber ku di bin tecellîya eşq û mehebbeta Heq de ye, wekî kağezeke ku di bin mercekê de dişewite, temayulên nefsanî di wî de temen û emrê xwe xilas kirine.

## 3. MARÎFETULLAH Û TECELLÎYÊN DI ARIFAN DE

Marîfetullah, îlmekî bêsînor û bêdawî yê îlahî ye ku hemû sirr û hikmetên li kaînatê dihewîne. Bi maneya tam tarîfkirina vî îlmî, di ser îdraka beşerî re ye. Lêbelê herkes, bi qeder îqtîdar, îstîdad û ğeyreta xwe ji vî îlmî çêjê digre û nesîbdar dibe. Bi vê sedemê Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*(Xudayê min!) Ez nikarim bi awayê Tu jê re layiq medh û sena li ser Te bidim! Te çawa medh û sena li ser xwe dabin, Tu wisan î!*"[514]

Ev hedîsa ha ku wek hedîsa qudsî hatiye rîwayetkirin:

"*Ez xezîneyeke veşartî bûm, min ji marîfeta (hatim naskirina) xwe mehebbet (hez) kir û ji bo ew min nas bikin min mexlûqat aferandin.*"[515] Ev îfade ehemmîyeta marîfetullahîyê îşaret dikin.

Di piştî Qur'ana Pîroz û hedîsên şerîf ên Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de hîç ti peyv û bizavek ji bizav û peyvên bendeyên xas ên ku gihane marîfeta Rebbê xwe ne sipehîtir in. Lewra fiêl û peyvên mûstesna yên wan, derûnî û ledunnî ne, ne ku kesbî ne. Bi vê sedemê ji wan re "weresetu'l-enbîya" tê gotin. Dilên wan kesên ku bizavên wan bendeyên xas mûşahede dikin û peyvên wan dibihîzin bi feyzê tije dibe. Ğeyretên wan zêde dibin, sirr destpê dikin ji wan re bi eyan dibin, ew ji wesweseyên şeytanî û îhtîrasên dinyewî xilas dibin.

514. Mûslim, Selat, 222.
515. Binêrin. Eclûnî, Keşfu'l-Xefa, II, 132.

Beşek ji van dostên Heq bi sifetê Hezretê Adem in, beşek ji wan bi sifetê Hezretê Îbrahîm in, beşek ji wan bi sifetê Hezretê Mûsa ne, beşek ji wan bi sifetê Hezretê Îsa ne, beşek ji wan Mûhemmedîyyu'l-meşreb in.

Wesfên farîqe û cudakar ê mirovên Mûhemmedîyyu'l-meşreb ev e; ew ehlê marîfet, mehebbet û tewhîdê ne. Di navbera van zatên kîram de mirovên wisan hene ku ji ber hemû wesfên farîqe û cudakar di xwe de kom kirine, bê sifet in. Yanî îhtiyaca wan bi îzahatan nîn e.

Cenabê Heq, ji van bendeyên xwe hez dike û li gorî halên wan tecellîyên curecur ji wan re bexşandine. Di vê meyanê de, Wî hinek ji wan bi Şahê Neqşîbend kirine, di teserrufatî û marîfetullahîyê de ew kirine deryayeke bêdawî û bêhemtaya himmetê; Wî hinek ji wan bi Mecnûn kirine û wekî wî ew di çolên evînê de dane gerandin; Wî hinek ji wan di gelî û newalên heyretê de dane gerandin; Wî hinek ji wan li hemberî ezameta îlahî ya xwe bi lal û bêziman kirine; Wî hinek ji wan bi Yûnus Emre kirine û wekî wî kirine bilbilê evîn û eşqê; Wî hinek ji wan jî wekî Hezretê Mewlana bi deryayeke maneyê kirine ku ji zimanê wî hikmet vedirêjin û durrên nadîde dipekin..

Cenabê Heq, hemû welîyên xwe yên ku ji bo van tecellîyên curecur bi mezher û xuyageh kirine, ew di keş û hewaya dostanîyê de bi îlmê marîfetê xemilandine û ew wek rêberên mûstesna ji bo temamê însanîyetê îhsan kirine.

Însanê kamil ê ku digihe marîfetullahîyê, ji ber ku di bin tecellîya eşq û mehebbeta Heq de ye, wekî kağezeke ku di bin mercekê de dişewite, temayulên nefsanî di wî de temen û emrê xwe xilas kirine. Bi vî awayî ji ber ku ew bûye merkeza cazîbeyeke nûranî, însanên dîger jî bi ğeyrê îxtîyarî û bêhemdî xwe ji wî hez dikin û wî dijmêrin. Lêbelê ji ber ku wî xwe ji şidandeka îltîfat û peywendîyên fanî rizgar kiriye; ew nakeve girdab û gera sifetên mezmûm û xirabên her wekî ğurûr, kibr û ucbê. Ew di nav xelkê de bi Heq re ye. Ew bi hestên "tazîm lî emrillah" yanî bi hurmet rîayetkirina fermanên Xuda û bi hestên "şefqet lî xelqillah" yanî şefqet û merhemetkirina li mexlûqatên Xuda, dijî. Lêbelê bi mûqtezaya mehebbeta ji Xuda, bi ziddê kamilê wê ku zalim û nankor in, hîç ji wan hez nake û meyla wan jî hîç nake. Lêbelê ew sade bi îcaba merhemeta xwe dilê wî bi wan jî dişewite û ji bo hîdayeta wan jî dûa ji Rebbê xwe dike.

Mal û milk û hemû serwetên dinyayî, sade ji bo înfaqê ji wî re lazim in. Însanê kamil, xwe ji bona marîfetullah û wasîlê îlellah kiriye weqf. Êdî ew bendeyekî xas e ku guhê xwe nade derd û îzdîrabên vê cîhanê.

❁

Mewlana -quddîse sirruh- dibêje; rûh, nefs û îstîdad ji însanekî ji bo însanekî din ferqdar in. Herkes di mirêk û ayneya xwe de ji cîhetên cuda cuda ve nexşên kaînatê cihê cihê dibîne. Ew, halên bûna bi Xuda re di navbera elêlat û qelebaliğan de jî bi vê qisseyê çi xweş îfade dike:

"*Sofîyek, keyfxweş dibe û ji bo di tefekkurê de noq bibe diçe nav bexçeyekî mûzeyyen. Ew li hemberî tezyînata rengarenga bexçeyî mest dibe. Ew çavên xwe miç dike û di mûraqebe û tefekkurê de noq dibe.*

*Kesekî ğafil ê li wir, zen dike ku sofî razaye. Ew ji vî halê wî re dikeve heyretê, bêhna wî teng dibe. Ji sofî re dibêje:*

«*-Tu çi radizî? Rabe çavê xwe veke, li weşîyên tirî, li darên ku pelên wan bel bûne, li çîmenên ku şîn bûne temaşe bike! Li berhemên rahma Xuda binêre!*»

Sofî jî bersiva wî wiha dide:

«*-Hey ğafil! Vê baş bizane ku mezintirîn berhema rahma îlahî dil e. Ji bilî wî ewên din di mesabeya siha vî berhemê mezin de ne. Di navbera daran de rûbarek diherike û diçe. Tu di ava zelala wî de şekl û xuyabûna darên herdu terefên wî dibînî..*

Ewên ku di nava avê de dixuyên û têne dîtin, bağ û bexçeyekî xeyalî ne. Bağ û bexçeyên esilî, di dil de ne. Lewra dil, nezargeha îlahî ye. Xuyahîyên zarîf û letîf ên wan, di alema dinyayê de ne, ku ew ji av û herîyê ne.

Heke yên li vê alemê, ne xuyahîya selwî ya wê keyfxweşîya di alema dil de nebûna, Cenabê Heq ji bo vê alema xeyalê nedigot mekanê hatin xapînê.

Di ayeta pîroza 185'an ya sûretê Alî Îmran de hatiye gotin:

«..(Ev) **jîyana dinyayê, ji pertalê pê xapînê pê ve ne tiştekî din e**.»

Ewên ğafil, dinya cennet zen kirine û gotine «Cennet ev e!», bi dîmena vî rûbarokî hatine xapîn.

Ewên ku ji bağ û bexçeyan yanî ji ewlîyaullah dûr mane, meyla xwe dane wê xeyalê û têne xapîn.

Rojekê ev xewa ğefletê bi dawîyê digihe. Çav vedibin, heqîqet tê dîtin. Lêbelê di nefesa dawîyê de çi feyda wê menzarê dibe?

Xwezî bi wî kesî ku berî bimre miribe, rûhê wî, bêhn ji heqîqeta vî bağî wergirtiye..»"

Bi rastî kesek, heke îtîbarê bi lezzetên nefsanî yên dinyayî nede û berê xwe ji wan vegerîne, Ellah -celle celalûhû- rûhê wî bendeyî safî û qelbê wî bi nûr dike.

Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- got:

"*Qelbê ku nûr ketibîyê, tê vekirin û fereh dibe.*" Jê pirs kirine, jê re gotine:

"-Ya Resûlellah, elametê vê çi ye?" Wî jî bi vî awayî bersiva wan daye, gotiye:

"*Dûrbûna ji dinyaya fanî ye, dilê xwe dana bi mala axretê ye ku ew ya ebedî ye û berî mirinê hazirbûna ji bo mirinê ye.*"[516]

Ehlûllah rêwîyên durust ên rêya bi şerefa marîfetê ne, yanî dilên dostên Heq, wekî sedefan e ku ji dilopên barana nîsanê durran peyda dikin. Ew çendîn dilên xam ên ku ji wan re mehebbetê şanî didin, bi lutfa Xuda, ji wan dûr namînin û her yekî ji wan dikine sedefeke durra gir.  Bes bila ev talib karibin dilopa barana ku di vê sedefê de were veşartin, îdrak bikin!

Di şerha *Mesnewî*'yê de hatiye gotin:

"Ellah ê xwediyê kelamî sirrek ji guhê ewran re got, wekî meşka avê hêstir ji çavê wê barîn. Sirrek ji guhê gulê re got; ew bi selteneta reng û bêhnan sipehî kir. Sirrek ji kevir re got; ew di nav madenê de kire eqîq. Yanî wî bi sifetê xwe yê letîf tecellî kir, ji ewran av herikî, gul sipehî kir, kevir jî bi qîmet kir.

Wî sirrek da bedena însanî jî; ehlê marîfetê ku ew sirr mûhafeze kirine ji bo bêdawîtîyê bilind kirine. Ev dostên Heq, ji alema îlahî îlham û sirûş girtine, ji cismên xwe rizgar bûne û gihane sirra nêzîkbûna ji Heqq."

516. Taberî, Tefsîr, VIII, 37.

Hîç guman nîn e ku ev sirr, sirra mehebbetê ye ku wek tecellîyên ferqdar û cuda ji bo marîfetê medar in. Sirra mehebbetê ye ku kemal û sipehîtîya her tiştî di keş û hewaya feyzdara wê de hatine veşartin.

Ew dostên Xuda, yên di sewîya bilind de di wan de tecellîyên mehebbeta zatî zêde dibin. Mehebbeta zatî, hezkirina kesekî bi ğeyrê îxtîyarî ji fanîyekî ye û sazkirina girêdana evînekê bi wî re ye. Ev mehebbet mecazî ye. Mehebbeta heqîqî ya zatî jî bi cure meclûbîyetekê bi Rebb ve hatin girêdan û di wî de fanîbûn û tinebûn e.

Dostên Heq ku ji bo tecellîyên vê mehebbeta zatî bûne mezher û xuyageh, ne ew kes in ku çi qeder îkraman bibînin hez dikin û dema li qehrê jî dikevin hezkirina wan lawaz dibe. Ev hîkaya mecazî, ji bo mehebbeta zatî nimûneyeke sipehî teşkîl dike, pêktîne:

Mewlana Camî -quddîse sirruh- vedibêje:

“Xortek di heleqa sohbeta pîrê me Mewlana Sadeddîn Kaşgarî de hebû. Di vî ciwanî de rîyazat, xelwet û eşq, di pileya pêşî de bûye. Ew jî wekî min, bi sipehîyeke fanî ve hatibû girêdan. Bi vî awayî qîmetê xwe yê ku di dilê xwe de komkirî di kêlîkekê de ji wî terefî re dewr kiribû.

Wek dîyarî û xelat tiştek ji zêr û pirlanta kirrîbûn û li ser rêya ku ew xweşik tê re bibûre danîbûn û ji bo mirovekî ku di wir de derbas dibe raneje wan û wan nebe jî xwe li kenarekî veşartibû. Bi fikra wî hezkirîya wê di wir de dibûre, hedîya wî dibîne û radijîyê wê ji xwe re dibe. Lêbelê wê dê nizanîba ku ew ji kê û çawa hatiye. Dema ez wezîyetê hîn bûm, min jê re got:

«Tu çi karekî ğerîb dikî! Ew tiştê ku te bi curecur zehmetîyan bidest xistiye, li ser rêya wê dihêlî! Heke ew wan peyda bike, wan bibîne, raje wan jî ewê nizanibe ka ew ji kê û çima li wir hatine danîn. Naxwe hema nebe nebe tiştekî bike, bila ew zanibe ku ew ji te hatiye!»

Evîndarê ciwan bi hêstirên çavên xwe hejîya û ev bersiv da:

«-Tu çi dibêjî? Ma ji te were ku ez ğerîbtîya tiştê ku dikim, nizanim! Dema ez vî karî dikim ez hîç ti hemberekê ji bo wî ji wê hêvî nakim. Lewra ez naxwazim ku ew ji bo hedîyeyên min li hemberî min bikeve bi minnetekê!»

Ez ji vê bersivê lerizîm. Mehebbeta mecazî ya ji fanîyekê heke ziravî, zarafet û sipehîtîya bizaveke wekî vê kûr şanî dide, kî dizane ka ewên ku bi

«mehebbeta zatî» nail bûne, ji bo çi tecellîyên bilind ên marîfetullahîyê dibin makes û xuyageh."

Mewlana Celaleddînê Rûmî di bara îzahkirina van safhayên qelb de halê xwe yê di wê dema di Medresa Selçûqîyan de di zirweya îlmên zahirî de "dersa-am" bû, bi "xam bûm"; halê xwe yê di wê dema bi tecellîyên marîfetullahîyê nail dibe û sirrên li kaînatê destpê dikin jê re eyan dibin jî bi "pijîyam"; halê xwe yê di dema fanîbûna xwe di mehebbeta zatî de jî bi "şewitîm" îfade kiriye..

Gihiştina bi marîfetullahîyê, bê îmaneke mûtmeina bi Zatê Ulûhîyetê û bê waqifbûna ji tecellîyên îlahî ku îdraka beşerî destûrê jê re bide, ne mûmkin e.

**Xudayê min! Ji me re bike nesîb ku em karibin bi lîyaqet heqê wan emanetên ku te ji me re lutf kirine, eda bikin! Me ji bo ew qeder amelê salih bike xwedî ku li axretê me ji bo rahma mezina te bike nail! Qelbên me ji bo tecellîyên mezin ên marîfetullahîyê bike xuyageh! Me bi sirrên "ehsena teqwîm"ê bigihîne ku te ew wek tecellîya mehebbet û merhemeta xwe ji bendeyên xwe re îhsan kiriye û dilên me bi şevnemên rahma xwe îhya û abad bike!**

**Amîn!..**

**Gihiştina mewhîbeyên îlahî, bi qiwama qelb ve bend e.**

## B. MEWHÎBEYÊN ÎLAHÎ

Ji bilî Xuda hemû heyber, bi tecellîya sifetê “Letîf” ê Rebbê Mezinê me, yanî bi lutfkirina wî hatine aferandin. Hîç yek ji mexlûqatan nîn e ku heq kiribe û bedel dabe û wisan hatibe hebûnê. Bi wicûda fanî û îzafî ya heyberan hemû wesf û îmkanên bi hikmetên aferîna wan ve bend, bi temamî her yek ji wan mewhîbeyeke[517] îlahî ye. Maneya vê hatina hebûnê ya hemû mewcûdatan, ji lutf, kerem û îhsana Cenabê Heq îbaret e.

Hatina hebûnê ya her tiştê ku hatiye aferandin û wesfên ku ew jê re hatine bi sahîb û xwedîkirin, di esilê xwe de her yek ji wan digel ku “mewhîbeyên îlahî” ne jî, lêbelê em dîsa vê tabîrê/îfadeyê ji bo rêjeya wan qunağ û merheleyan û naîlîyetên wehbî bikartînin ku mirovên ketine rêya tesewwufê têde qut kirine.. Di navbera xelkê de ewên ku biîstîdad bin, çi qeder ew di vê rê de bipêşve diçin, ew hê neçûne axretê destpê dikin ji bo hinek lutf û mezîyetên mûstesna naîl dibin.  Heke çi qeder di destpêka van naîlîyetan de bi şiğulandina îradeya cuzî îstihqaqek (heq-kirinek) mewzûbehs bibe jî, lêbelê di encamê de ji ber ku lutf li ser îstihqaqê ğalib û raser e, naxwe teleqqîkirin û wergirtina van sirf wek mewhîbeyeke îlahî û sînordarkirina peyva “mewhîbe”yê ji bo van tenê bûye adet.. Lewra di vir de ferqa mezina di navbera heqkirinê û naîlîyetê de, temayula “tine” ferzkirina îstihqaqê welidandiye. Ev dîtin-nêrîn, di esasê xwe de bi sebeb ku ew îmkana şexsî ya ku ji bo îstihqaqê dibe medar jî mewhîbeyeke îlahî ye, naxwe zahf şaş jî nayê jimartin.

Hinek şexsên biîstîdad ku bi terbîya tesewwufî gihane sewîya rûhî di vê rêwengîya manewî de ji bo gellek tecellîyên kerametan dibine naîl.  Ev wiha ye: Ji bo hinek dostên Heq hikmet eyan dibin û gellek bişkokên sirrdar yek bi yek têne vekirin. Mechûl destpê dikin têne keşfkirin û mûamma destpê dikin têne vekirin. Sunûhat û îlhamên di qelbekî selîm de, berê bendeyî didin

517. **Mewhîbeyeke îlahî**: Bexşîş û lutfên îlahî

ser cewhera heq û heqîqetê. Gellek rasteqîneyên Lewhû'l-Mehfûzê yên aîdê pêşerojê bi xuyabûna rû'yayên sadiq di qelb de ew hebûnê ji xwe re dibînin û têne dîtin. Bende digihe awireke bifîraset û tefekkureke kamila ku pê di her tiştî de mirada îlahî hiss dikin.

Bi îlawe li ser ğeyret û hewldanên semîmî, însan bes di netîce û ekama lutf û îhsanên îlahî de digihîje van halan û gellek şeklên curecur ên tezahura wan hene. Ev jî waqîayek û realîteyek e ku wek îlm ji bo îfadekirina van naîlîyetan "ledunnîyat" hatiye gotin. Agahîyên ledunnî, heke çendan di naverokekê de ne, ku ew ji îdrak û îhateya însanî dibûrin jî lêbelê dîsa ewên ku bi lutf û kerema Cenabê Heq hissedar bûne, bi qeder tereqqîya ku wan qeyd kirine digihine îdrak û îz'aneke şamildar û berfereh. Vêga emê kar bikin ji bo naveroka îlmê ledunnî -bi qeder taqeta beşerî û cewaz dana dînî- eşkere bikin.

**"Dema ez ji evdê xwe hez dikim (adeta) ez ji bo wî dibim ew zimanê wî yê ku pê diaxive, ew dilê wî yê ku pê aqil dike, ew guhê wî yê ku pê dibihîze, ew çavê wî yê ku pê dibîne, ew destê wî yê ku pê digre û ew lingên wî yê ku pê birêve diçe.. Ew çi ji min bixwaze, hemin ezê bidimê. Heke ew penaha xwe bîne ber min, ezê wî biparêzim."** [518]

## 1. ÎLMÊ LEDUNNÎ

Ev îlm, îlmekî **wehbî** ye ku bi temamî ji dana Heq e û bes bi lutfkirina Xudê Teala mirov pê digihe.

Di Qur'ana Pîroz de di bara vî îlmî de peyva « مِنْ لَدُنَّا عِلْماً »"**îlmek ji cem me, îlmek ji terefê me de**"[519] hatiye bikaranîn. Ha tabîra/navlêka "**îlmê ledunnî**" jî ji vir tê.

Di esasên xwe de, ew heqîqetên ku Cenabê Heqq, ji Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re dane zanîn, sê beşan, sê kategorîyan teşkîl dikin. Ji van jî ew heqîqetên di kategorîya **yekem** de ne, ji ber ku ew sade dikarin bi nûra nubuwwetê/ pêğembertîyê werin îdrakkirin, ev di navbera Xudê Teala û Pêğemberê Mezinê Wî de wek razekê/sirrekê mane. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- heqîqetên wiha hîç ji ti sehabîyekî xwe re îfşa nekirine.

Mewcûdîyeta wan heqîqetên wiha di navbera Xudê Teala û Pêğemberê Wî de ku îfşakirina wan wiha ne caiz û mûmkin e, heke ew werin îfşakirin jî dîsa hatin fehmkirina wan ne mûmkin e. Lêbelê ew ji mezmûna (têderînîya) hinek hedîsên şerîf têne fehmkirin. Çawa ku Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- ji eshabê xwe re gotiye:

518. Buxarî, Rîqaq, 38.
519. Kehf, 18/65.

“*Heke tişta ku ez dizanim we zanîbûya; hûn hindik dikenîn, zehf digrîn.*”[520]

Di hedîseke şerîfa din de jî gotiye:

“*Hinek demên min ên wisa bi Cenabê Heq re dibin ku ne ti melaîketekî mûqerreb (ji Xuda nêzîk), ne jî ti pêğemberek ji wan waqif dibe.*”[521]

Ji menzûmeya heqîqetan koma **duyem**a ku Cenabê Heq ji Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re dane zanîn jî heye. Ev heqîqet, dikarin bes ji terefê zatên ehil û biîstîdad ve -wek rast- werin fehmkirin. Ev zat jî bi aqilê xwe û rûhê xwe bilind bûne û ji wan re tabîra “**xewas**” yan jî “**xewassu’l-xewas**”[522] tê bikaranîn. Rasteqîneyên di vê kategorîyê de rastîyeke malûm e ku Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-ew ji hinek sehabîyên mezin ên her wekî Hezretê Ebûbekr û Hezretê ‘Elî re guhastine, neqil kirine. Guhastina van ji sadirê (singê) ji bo sadirê (singê) ‘an‘aneyek (kevneşopîyek) e. Lewra heke ew ji bo satiran (rêzenivîsan) werin guhastin, hingê wê mirovên ne-ehil jî van bibînin û eger û îhtîmal heye ku -ew bi sebeb şaş fehmkirina wan- ber bi xeta ve werin kişkişandin. Digel vê jî di vê babetê de şexs bi qeder îqtîdar û îstîdada qelbî ya xwe berpirsîya wî jî heye. Bende, ji bo selametîya xwe mecbûr e, vê îstîdada xwe bide înkîşafkirin.

Ji wan heqîqetên ku Cenabê Heq ji Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re dane zanîn û ew koma **sêyem** pêktînin jî heqîqetên şer‘î ne. Di bara agahîyên di vê kategorîyê de alema însanîyetê mûkellef e ku îmanê bi wan bîne û bi wan amel bike. Bi vê sedemê Cenabê Heq di van hukmên xwe de, bendeyên xwe yên di sewîya biçûk de jî li ber çavan girtine û ew bi awayekî wisan ku taqeta wan jî ji wan re hebe, teqdîr kirine. Ev ji bo herkesî lazim in û li ser esasê tayîna mûkellefîyeta umûmê ji alemê re hatine îlankirin.

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dem bi dem di babeta bûyerên ku wê heta bi qîyametê çêbibin de ji eshabê xwe re îzahat dikirin. Lêbelê pirranîya sehabîyan bi awayê layiq ev fehm nedikirin. Hinekan ji wan jî ew jibîr dikirin û ew wisan diçûn.[523]

520. Buxarî, Kusûf, 2; Mûslim, Selat, 112.
521. Munawî, Feyzu’l-Qedîr, IV, 8.
522. Xewas: Bendeyên mûtteqî yên bijardî. **Xewassu’l-Xewas**: Ewên ku bijardî yên bijardîyan e.
523. Binêrîn. Buxarî, Qeder, 4.

Lêbelê wekî ku me li jorê jî îfade kiribû, xebera hinek heqîqetên ku hatin fehmkirina wan zor e, ji hinek kesên ehil re hatiye dayîn û tê zanîn ku ev jî bes ji sadirê (singê) ji bo sadirê (singê) têne guhastin. Lewra ev ew heqîqet in ku çawa ji bo umûmê ne lazim in, ew ji îdrak û îhateya gellek kesan derbas dibin. ‘An‘aneyeke dîrokî ye ku teselsula agahîyên wiha di navbera mirovên biîstîdad de, ne di awayê axaftina digel herkesî de, lêbelê di pirranîya caran de ew bi awayê guhastina ji sadirê (singê) ji bo sadirê (singê), yanî bi awayê guhastina ji ferdekî ehil ji bo ferdekî din tê bicihanîn.

Bi îlawe li ser Hezretê Ebûbekr û Hezretê ‘Elî hinek ji sehabîyên her wekî Îbn-î Mesûd, Ebûhûreyre, Mûaz bin Cebel û Harîse bin Malik -radîyellahû anhûm- jî ji bo hinek sirrên aîdê vî îlmê xusûsî, bûne mezher.

❁

Xudê Teala, ji bo qelbên wan bendeyên xwe yên ku karîne bi heqî ji Wî îttîqa dikin, xwe biparêzin, arzû û îradeya beşerî ya xwe ji bo îradeya îlahî ram û teslîm bikin, gellek lutfan dike ku hîç ti çavan ew nedîtine û ti aqilan ew kişandine. Çawa tê zanîn ku Rebbê Mezinê me, ji bo bendeyên xwe yên wiha mûtteqî, îlm û hikmeteke xusûsî lutf kiriye. Ew di Qur’ana Pîroz de wiha dide zanîn, dibêje:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا إِنْ تَتَّقُوا اللّٰهَ يَجْعَلْ لَكُمْ فُرْقَاناً وَيُكَفِّرْ عَنكُمْ سَيِّئَاتِكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظِيمِ

**“Gelî mirovên ku îman anîne! Heke hûn xwe ji Xuda biparêzin, Ewê furqanekê** (îlm, fîraset û fehmeke ku ya qenc û neqenc ji hev cuda bike) **bide we, Ewê gunehên we ji bo we binixumîne û Ewê we efû bike. Lewra Xuda, xwediyê lutfeke mezin e.**”[524]

**“Gelî mirovên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û bawerîyê bi Pêğemberê Wî bînin ku Ew ji rahma xwe du qatan bide we û Ew ji ronahîya xwe nûrekê ji we re lutf bike ku hûn pê birêve biçin**..”[525]

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîf de gotiye:

524. Enfal, 8/29.
525. Hedîd, 57/28.

“*Ewê ku bi îlmê hîn dibe amel bike, Xudê Teala tiştê ku ew nizane jî li wî hîn dike.*”[526]

Hedîseke Qudsî jî di vê maneyê de hatiye rîwayetkirin:

“Kî dijminahîya bendeyekî min ê welî bike, bêşiwar min li dijî wî ceng îlan kiriye. Evdê min, bi tiştekî ji wan ferzên ku min fermana wî bi wan kiriye hezkirîtir xwe ji min nêzîk nake. Evdê min (bi îlawe li ser ferzên ku ew wan eda dike) bi îbadetên nafîle jî her xwe ji min nêzîk dike; heta paşê ez ji wî hez dikim. **Dema ez ji evdê xwe hez dikim jî** (adeta) **ez ji bo wî dibim ew guhê wî yê ku pê dibihîze, ew çavê wî yê ku pê dibîne, ew destê wî yê ku pê digre û ew lingê wî yê ku pê birêve diçe**. Ew çi ji min bixwaze, hemin ezê bidimê, heke ew penaha xwe bîne ber min, ezê wî biparêzim.”[527]

Wekî em dibînin piştî mirov ferzan bi rîayetkirina edeb û erkanên wan û wan bi îxlas eda bike, ew îbadetên nafîle yên ku bi eşq, şewq û wecdê ji dilûcan têne kirin jî her yek ji wan ji bo lutf û îkramên wiha mûhteşem ên Cenabê Heq wesîleyekê teşkîl dikin, navgînekê pêktînin.. Ji bo gihiştina van lutf û îkraman jî divê mirov xwe ji arzûyên suflî yên nefsa xwe biparêze, xwe ji tiştên heram û şubhedar dûr bike û sunneta senîyye jî ji bo xwe bi terza jîyanê bike. Ji bo naîlîyet û gihiştina bi van lutfan, divê mirov çêjên bedenî yên xwe di heddê layiqê (pîvana pêwîsta) wan de bigre û alema rûhî ya xwe bide înkîşafkirin. Lewra ev lutfeke wisan mezin e ku Cenabê Heq pê îdraka însanî ya ku bi lawazîyên beşerî yên wî hatiye perdekirin, ji bo ya rast, ji bo heqîqetê û ji bo hikmetê vedike. Vêca însan di her hal û hereketên xwe de li gorî îradeya îlahî gavên xwe diavêje. Di teşxîs û texmînên xwe de îsabet dike, rastîyê destnîşan dike. Sebeb, behane, û dîmenên zahirî, nikarin bendeyekî wiha ku îradeya wan gihane îradeya Heq, bixapînin. Bende, rûyê hundurînê bûyeran keşf dike û bi besîret û pêşebînîya pêşketî digihe.

Li kêlekekê ew bi îlhamên ku têne qelbê wî teşxîs û texmînên bi îsabet dike, lêbelê hinek fikrên xweş, hûr û zirav hene ku têne aqilê wî û di zêhnê wî de dizên. Ev jî di bara ehwal û rewşên qelb de maneyên reqîq û zirav in ku ne bi peyvan, lêbelê di pirranîya zemanî de bi îşaret û remzan ji ehilê wan re têne ragihandin. Ev bi tabîra “**letîfe**” yan jî bi pirrjimareya wê “**letaîf**”ê hatine îfadekirin. Ev mane, ew îşaret û rêber in ku Heq Teala ji bo bendeyên xwe yên di rêya manewîyatê de lutf kirine.

526. Ebû Nûaym, Hîlyetu’l-Ewlîya, X, 15.
527. Buxarî, Rîqaq, 38.

Ji bilî van jî dema bendeyên salihên wî dikevin rewşên asê û mûşkil, Cenabê Heq dikare bi awayê şîyarkirina wan bi dengên ku ji ğeybê tên jî arîkarîya wan bike. Ji bo vê arîkarîyê jî "**hatif**" hatiye gotin. Maneya wê ew dengên bi dizîkahî ne, ku xwediyê wan nediyar e, nayê dîtin[528]. Ev jî ew deng in ku di qelbê salikî de dertên holê û wî ji bo Heq bang dikin.

Ev bûyer, şanî dide ku bihîstina dengan bi sivikî, heqîqetek e:

Piştî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wefat kir, sehabîyan dixwest wî bişon. Lêbelê ew di navbera xwe de li ser vê ketibûne îxtîlafê; gelo bila wekî ku me ji bo mirîyên dîger ên xwe dikir, em cilên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê bikin û wî wisan bişon, yan jî bila em cilên wî jênekin û wî di cilên wî de bişon.. Bi dengekî ku ji ğeybê ji wan re hatî[529] ji wan re hate ragihandin ku bila ew cilên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê nekin û wî di cilên wî de bişon.

❁

Xudê Teala, bi navgîna pêğemberên xwe "Kîtab", "Hikmet" û tiştên dîgerên ku wan nizanîne, li mirovan hîn kirine. Ev talîm, carina bi eşkerehî, carina jî bi awayê îlhamên ku yekser têne dil, hatiye bicihanîn. Lêbelê ev hal, wekî ku me li jorê jî îfade kiribû, pirranîya zemanî ji ber ku bi keyfîyetê tezahur dikin ku bi îdraka însanî hatin fehmkirina wan zor e, ew ji pirranîya însanan re mechûl mane. Feqet heq û heqîqet bûnîya îlmê ledunnî bi Qur'an û sunnetê sabit e.

Çawa ev bûyera ku di navbera Hezretê Mûsa -eleyhisselam- û Hezretê Xizir -eleyhisselam- de cereyan kiriye. Ew hem di Qur'ana Pîroz[530] de, hem jî di hinek hedîsên şerîf ên Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de hatiye vegotin jî, ronahîyên mûhteşem di naveroka îlmê ledunnî de didin xuyakirin:

Artêşa Firewn bi dûv Hezretê Mûsa û mirovên ku îman pê anîbûn, ketibû û ew li pêşberî çavên Kurên Îsîraîl (Îsraîlîyan) di Deryaya Sor de ğerq bûbû, çûbû helakê. Di piştî vê lutfa îlahî de Hezretê Mûsa -eleyhisselam- qewmê xwe kom kir. Wî weazeke zahf fesîh, belîğ û şêwetund li wan kir. Ew wisan

528. Ji bo vê hûrî û ziravîyê di Erebîya nûjen de ji bo telefonê hatif tê gotin.
529. Binêrin. Ebûdawud, Cenaîz, 27-28; Ahmed b. Henbel, VI, 267; Îbn-î Mace, Cenaiz, 10.
530. Li ayetên 60-82'an ên sûretê Kehf, binêrin.

kartêker bû ku mirovên lê guhdarî kirin dilên wan nerm bûn û hêstir ji çavên wan barîn. Qewmê wî ji bo kûrahîya di îlm û marîfeta Hezretê Mûsa de heyran ma. Yekî ji nav qewmê wî bi feyza vê sohbetê mest bûbû, jê pirs kir, jê re got:

"-Ya Pêğemberê Xuda, gelo li dinyayê kesekî ji te alimtir heye?"

Ev pirs li xweşîya Hezretê Mûsa -eleyhisselam- çûbû, bêyî bibêje; "Xuda dizane" wiha bersiva pirsa wî dabû, jê re gotibû:

"-Ne xêr, ez kesekî wiha nizanim." Bi vî awayî wî zelle[531]-yek kir. Xudê Teala ev bersiva wî xweş nedît û di wê esnayê de wehî-peyğam ji Hezretê Mûsa re hinart, jê re got:

"-Li cihê ku du derya digihin hev bendeyekî min heye, ew ji te alimtir e. Min îlmekî taybetî (îlmê ledunnî) daye wî."

Mûsa -eleyhisselam- bi arzûya hînbûna vî îlmî:

"**-Got: Ezê bê rawestin heta bi cihê ku ew herdu derya digihin hev herim,** (heke pêwîst bike) **ezê bi salan birêve biçim**."[532]

Paşê ew bi Yûşa bin Nûn ê kurê xweha xwe re derket rê. Di maweya/ esnaya seyahetê de hinek tecellî jî hatin jîyîn. Di dawîyê de ew şexsê ku lê digerîyan peyda kirin. Di Qur'ana Pîroz de ev hevdîtin, wiha tê ragihandin:

"**Ji nişka ve evdek ji evdên min peyda kirin ku me ji cem xwe rahmek dabû wî, dîsa me ji terefê xwe de îlmek** (îlmê ledunnî) **li wî dabû hînkirin.**"[533]

Ev zatê ku ji Mûsa -eleyhisselam- re bi wehyê îşaret pê hatiye kirin, di wezîyeteke wiha de bû, li ser latekê bû û cileke kesk li xwe kiribû. Hezretê Mûsa jê nêzîk bû, silav dayê û jê re wiha got:

"-Ez Mûsa me."

Xizir[534] -eleyhisselam- jî jê re got:

531. **Zelle**: Ew peyv û bizav e ku bi ğeyrê îxtîyarî (bêqesdî) kêm caran ji pêğemberan sadir dibe, tê û ew bi rizaya Xuda re ahengdar nabe.
532. Kehf, 18/60.
533. Kehf, 18/65.
534. Peyva Xizir di zimanê Erebî de bi maneya «**kesk**» yan jî bi maneyên «**bi keskahîyê re elaqedar**» tê. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibêje: "Sebebê ku navê «Xizir» li Xizir -eleyhisselam- hatiye kirin, ev e: Dema ew li ser giyayên zerbûyî rûdinişt, wan

“-Naxwe tu Mûsa yê pêğemberê Benî Îsraîlîyan î.”

Mûsa -eleyhisselam- jê pirs kir, jê re got:

“-Ma tu ew zat î ku Xudê Teala ew ji bo min wek alimtirîn însan daye zanîn?”

Xizir -eleyhisselam- di bersiva wî de got:

“-Ya Mûsa, Xuda îlmek daye te, ez wî nizanim; îlmek daye min jî, tu jî wî nizanî.”

Mûsa -eleyhisselam- jî ji Xizir -eleyhisselam- re got:

“**-Ma ez dikarim li dûv te werin ji bo tu wê ruşda** (îlm û hikmeta ku mirovî digihîne heqîqetê) **ku Xuda li te hîn kiriye, tu jî wê li min hîn bikî?**”[535]

Mûsa -eleyhisselam- bi vî awayî arzûya xwe ji Xizir -eleyhisselam- re da zanîn ku ew dixwaze vî îlmî ji wî tehsîl bike. Dixuyê ku ji bo tehsîla vî îlmî wekî ku di ayeta pîroz de jî derbas bû “tabî bûn” yanî li dûv seyda çûn, pêwîst dike. Lewra ev îlm, wê ji sadirê (singê) ji bo sadirê (singê) were guhastin. Ji bo vê jî mecbûrîyeta maîyyetê yanî pevrebûna maddî-manewî heye.

Mûsa -eleyhisselam- dixwest hikmeta hinek heqîqetên ku bi zahirî hatin fehmkirina wan ne mûmkin bû û ew ji bo wî ji ecaîb û ğeraîban dihatine dîtin ji Xizir -eleyhisselam- hîn bibe. Vêca Xizir -eleyhisselam- jî ji Mûsa -eleyhisselam- re got:

“**-Bi rastî tu nikarî bi min re sebir bikî! Ma tu yê çawa karibî li ser zanîneke ku tu rûyê hundurê wê nizanî, sebir bikî?**”[536]

Xizir -eleyhisselam- di esasî de bi vê peyva xwe di bara rewşa psîkolojîka Hezretê Mûsa de keşfa pêşî ya xwe kiribû, xwe ji wî re vedigot ku ev hal, ji xwe wê di dawîyê de bicih bihata. Lewra ev îlm, sebireke mezin dixwest û Mûsa -eleyhisselam- jî ji heyateke bihereket dihat. Li vê derê dersa ku Hezretê

---

destpê dikirin kesk dibûn.” (Buxarî, Enbîya; 27; Tirmizî, Tefsîr, 18; Deylemî, Mûsned, I, 345).
Ji tabiînan Mûcahid jî dibêje: “Dema Xizir nimêj dikir, hawîrdora wî dihate bikesk-kirin.” Li gorî ji van daxuyanîyan jî tê fehmkirin, navê Xizir, ne navê esilî yê wî ye, piştre ew nav lê hatiye kirin.

535. Kehf, 18/66.
536. Kehf, 18/67-68.

Mûsa ji xwe re bigre ev bû ku ew meqamê xwe û bêçaretîya xwe li hemberî îlmê heqîqeta îlahî bibîne.

Mûsa -eleyhisselam- jî bi israr jê re got:

“- **Xuda hez bike, tu yê min bisebir bibînî. Ezê hîç di ti karekî de li ber te ranebim**.”[537]

Xizir -eleyhisselam- jê re got:

“-**Madem tu yê bi xebera min bikî, naxwe heta ez tiştekî ji te re nebêjin, tu hîç di ti babetekê de tiştekî ji min nepirse!**”[538]

Di piştî vê de ew di kenarê behrê de pevre birêve çûn. Paşê ew li gemîyekê siwar bûn, ew gemî ya du birayan bû. Xizir -eleyhisselam- destpê kir gemîya van herdu birayên ku heta heqdesta xwe jî ji wan nesitandibûn qul kir. Mûsa -eleyhisselam- bi kelecan jê re got:

“-Ma tu dixwazî xelkê gemîyê bixeniqînî! Te çima gemî qul kir? Xwediyê vê gemîyê ji xwe kesên feqîr in, ew nanê xwe ji vir derdixin, qezenc dikin. Tu çi ji vê gemîya van ğerîban dixwazî? Bi rastî te karekî zehf bi sosret kir!”

Xizir -eleyhisselam- jî îqaza xwe ya pêşî di bîra wî anî û ev bersiv dayê:

“-Ma min ji te re negotibû; tu nikarî bi min re sebir bikî?”

Mûsa -eleyhisselam- jê re got:

“-Ji ber tiştekî ku min jibîr kirî, li min negre; bi sebeb vî karî zehmetîyê ji min re çêneke.”

Tam di vê navê de çûkekî beytik hat li ser kenarê gemîyê danî. Piştre bi nikilê xwe ji behrê ev wergirt. Xizir -eleyhisselam- ev dîmen ji Mûsa -eleyhisselam- re şanî da û jê re ev teşbîh kir, got:

“*-Li ber îlmê Xuda, îlmê te, îlmê min û îlmê mexlûqatên dîger jî bi qeder vê avê ye ku vî çûkî bi nikilê xwe ji behrê wergirt.*”

Ew piştî mûddetekê ji gemîyê peya bûn û destpê kirin pev re meşîn. Paşê ew li kurikekî biçûk rast hatin. Xizir -eleyhisselam- derhal ew kurik kuşt.

537. Kehf, 18/69.
538. Kehf, 18/70.

Mûsa -eleyhisselam- jê re got:

“-Te canekî tertemîz, hem jî ne di ber canekî de kuşt ha! Bi rastî te karekî zehf xirab kir!”

Xizir -eleyhisselam- jî dîsa bi heman awayî hemberê wî da:

“-Ma min ji te re negotibû; tu nikarî bi min re sebir bikî?”

Mûsa -eleyhisselam- di nav mehcûbîyeteke mezina nemana li ser wê soza xwe ya ku dabûyî de got:

“-Heke ji vêga û pê de ez tiştekî ji te bipirsim, êdî bi min re hevaltîyê neke. Bi rastî tu gihatî dawîya wan uzrên ku ez ji te re bibêjim.”

Dîsa ew pevre birêve çûn. Paşê ew gihane cem xelkê gundekî ji wan tiştek ji bo xwarinê xwestin. Lêbelê xelkê gund hem ew ji bo xwe bi mêhvan nekirin, hem jî serdêrî û mûameleyeke xirab digel wan kirin. Dema Hezretê Mûsa û Xizir -eleyhimasselam- ji gund derdiketin li wir dîwarek dîtin ku dikir biherife. Xizir -eleyhisselam- bi kerpîçan ji serî de ji nû ve ew dîwar lê kir û ew rast kir. Vêca Mûsa -eleyhisselam- jê re got:

“-Em hatin cem wan, wan elaqe ji me re şanî neda, em bi mêhvan nekirin, heta parîyek du parîyên ku birçîbûnîya me bibin jî ji me re zehf dîtin, tu ji wan mirovan re bêhember kar dikî. Heke te bixwesta, helbet te li hemberî vî heqdestek werdigirt.”

Xizir -eleyhisselam- jî jê re wiha got:

“-Êdî wextê ji hev cudabûna me hat. Vêga ezê rûyê hundurînê sê bûyerên ku te nekarî xwe li hemberî wan bigre, sebir bike, ji te re bibêjim:

Ew gemîya ku min qul kirî, ya kesên hejar bû, ew di deryayê de dişiğulîn. Min xwest wê biqusûr şanî bidim. Lewra li pişt wan, kralek hebû hemû gemîyên sağlem ğesib dikirin.

Herçî ew kurik bû; sibê ew dibû îsyankar. Herçî dê-bavên wî bûn, ew jî kesên salih bûn. Ji lewma em tirsîyan ku ew kurik, wan bi ber harbûnî û nankorîyê ve bikişkişîne û ezîyetê bigihîne wan. Bi vî awayî, me xwest ku Xudayê wan di şûna wî de yekî ji wî paqijtir, yekî ji wî bi merhemettir û dilovantir bide wan.

Herçî ew dîwar bû ku min ew rast kir, ew jî yê du sêwîyan bûye li gund. Di bin wî de jî xezîneyeke wan hebû. Bavê zarokan kesekî salih bû. Rebbê te

xwest ku ew herdu zarok bigihin çaxê xurtbûnîya xwe û ji Rebbê xwe wek rahmekê xezîneyên xwe derînin. **Min ev jî ji ber xwe de nekirin.** Ha rûyê hundurînê bûyerên ku te li hemberî wan sebir nekirî ev bûn"[539]

Di bara nuqteyên hikmetdar, îbretdar û esrarengîz ên di vê qisseyê de gellek tişt hatine îfadekirin û şerh hatine çêkirin. Em dişên hinek ji nukteyên tije hikmet ên di vê babetê de wiha îfade bikin:

Îlmê Ledunnî, dîtina bûyeran û şertên zahirî bi dîtineke ku ji pîvanên beşerî biwêdetir e, bi dîtina nîzamekê ye ku pirranîya mirovan pîvanên wê nizanin.

Mesela di hemû îlman de "pirs" giringtirîn kilîla hînbûnê tê qebûlkirin; lêbelê di vî îlmî de jî pirs, îtîraz, mûnaqeşe û mûnazara nîn e. Di hemberî vê de sikût, sebir û teslîmîyet heye. Li dawî û encama karan tê meyzandin.

**Hezretê Îbrahîm Heqqî yê Erzûrûmî** çi xweş dibêje:

Heq şeran bi xêran dike
Zen neke ku ğeyr
Wextê arif seyr dikin
**Em bibînin Mewla çi dike**
**Ew çi bike sipehî dike!**

Nebêje çima ev wisa ye
Ew wisa, di cihê xwe de ye
Heya, dawîyê seyr bike
**Em bibînin Mewla çi dike**
**Ew çi bike sipehî dike!**

Birayên gemîvanên salih ên ku di qisseyê de di seyaheta gemîyê de derbas bûn, heqdest ji Hezretê Mûsa û Hezretê Xizir -eleyhimasselam- nestandibûn. Bi vî awayî, ew li bereketa mezina wê qencîya biçûka ku bi dostên Heq kirin rast hatin. Gemîya wan, bi zirareke biçûka telafîya wê mûmkin, ji ğesbbûnê hate xilaskirin. Yanî ew sermayeyê helal ê ku wek îhsan dabûn, zayî nebû.

Dîsa bi qusûrdarkirina gemîyê û astengkirina ğesbbûnîya wê, di maneya îşaretkî de wiha hatiye şerh û ravekirin: Heke ew kesê ku di deryaya temen û emrê xwe de avjenîyê dike, wê nefsa xwe ya ku di şûna gemîyê de ye bêqusûr

539. Ji bo rîwayetên ku ev qisse di wan de hatiye vegotin, li Buxarî, Tefsîr, 18/4; Mûslim, Fezaîl, 170, binêrin.

bibîne, wê di girdaba/gera kibr û ucbê (xwe ecibandinê) de ji hêla meneyî ve ber bi helakê ve were kişkişandin.. Bi vê sedemê, divê ew tim û daîm bi îtîrafkirina bêçaretî û qusûrên xwe, xwe ji windakirinên manewî biparêze.

Di kuştina Xizir -eleyhisselam- ya zarokekî masûm de jî gellek hikmet hene:

Divê însan, hezkirina beşerî lêbelê hezkirinên masûm ên xwe yên her wekî hezkirina ji zarûzêçan, dê-bavan û bira û hevalan di qiwama layiqa wan de bigre û dernexe ser hezkirina ji Xudê Teala. Heke na, ev, wê însanî ji meqsûda esilî ya wî vegerînin, heta ewê wî ji rê jî derînin.

Yek ji navên mezin ên Cenabê Heq jî "**er-Reqîb**" e. Maneya vî jî ew e; Ellah Teala ji wan bendeyên xwe yên ku hez dike, pê razî nabe siha hezkirineke din bikeve ser hezkirina Wî ya di dilên wan de. Yanî hezkirina ji Xuda hevparî û şirîkatîyê qebûl nake.

Haleveku di wextê xwe de Yaqûb -eleyhisselam- jî nûra nubuwwetê/pêğembertîyê ya di enîya kurê xwe Yûsuf de his kiribû û di qelbê wî de li hemberê Yûsuf cereyan û herka mehebbeteke dijwar pêkhatibû. Mehebbet û dilpêvehîya zêde ya Yaqûb -eleyhisselam- ji kurê wî li ğeyreullahîyê ketibû. Bi vê sedemê Xudê Teala xwest îbtîla û îmtîhankirinekê bide wî. Di ekamê/encamê de wekî ku malûm e, ji hev cudabûnîyeke dirêj kete navbera wî û kurê wî. Mehebbeteke zêde, fîraqeke/cudahîyeke tehl li pey xwe anî.[540]

Hinek heqîqetên mezin, bi rêya weraseta sosyal dibine malê alemê û di mehsûlên kulturî yên mûşterek ên civakê de têne xuyakirin. Di esilê xwe de ev nukte (tinaza hûr û kûr) jî bi wan hezkirinên ku hatine bi pûtkirin re elaqedar e. Ew di straneke gelêrî de wiha hatiye xuyakirin; "mehebbeta pirr, bi xwe re cudabûnîya lezgîn tîne."

Bi rastî pirr îbretdar û hikmetdar e, dê-bavên wî kurikê ku Xizir -eleyhisselam- kuştî jî helbet dema ew kurik ji wan re bûbû di keyfxweşîyê de ğerq bûbûn, lêbelê dema ew miribû jî matem û şîneke mezin perên xwe bi ser wan de berdabû. Haleveku heke ew kurik jîyaba, wî bi xwe re dinya û axreta dê-bavên xwe jî mehû dikir. Heke qerara wî kurikî ji dê-bavên wî re bihata hiştin, wan hîç mirina wî nedixwest. Lêbelê Cenabê Heq ê ku merhemeta wî bêdawî ye, ji ber ku hezkirina wî ji wan bendeyên salih ên xwe ji hezkirina dê-bavekî ya ji zarokên xwe hê zehftir e, mirina wî kurikî teqdîr kir û di şûna wî de ji

540. Binêrin. Rûhu'l-Beyan, c. IV, rûp. 218.

bo wan dana kurekî salih di esilê xwe de lutf û kerem li wan kir.. Ew kurikê ku miribû, ji ber ku wek masûm ji vê dinyayê ji bo axretê hate guhastin, di hemberî jîyana dinyaya fanî de jê re bû ku digel dê-bavên wî jîyaneke ebedî ya wî jî hate parastin. Yanî bi lutfeke ku di sûretê qehrê de hatî zirara biçûk li ser zirara mezin hatibû tercîhkirin.

Naxwe nirxandina bendeyan ji bo bûyeran ji ber ku ew ji hikmeta îlahî ne waqif in, bi pirranî şaş in.

Rebbê Mezinê me di Qur'ana Pîroz de ferman dike, wiha dibêje:

وَعَسى أَنْ تَكْرَهُوا شَيْئاً وَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْ وَعَسَى أَنْ تُحِبُّوا شَيْئاً وَهُوَ شَرٌّ لَكُمْ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ وَأَنْتُمْ لا تَعْلَمُونَ

"**... Dibe ku tiştek zehf li xweşîya we neçe; lêbelê ew ji we re bi xêrtir be. Dîsa dibe ku tiştek zehf li xweşîya we biçe; lêbelê ew ji we re bi şer be. Xuda dizane, hûn nizanin**."[541]

Kuştina însanekî bêgunehê masûm, pirr tebîî ye ku ew sûcekî mezin e û li gorî şerîatê jî qisasê pêwîst dike. Lêbelê di bara ummeta Mûhemmed de ne mûmkin e; ew bi awayekî ku hukmên şerîatê teswîb nakin, sirf pişta xwe bi îlmê batinî bispêre û nimûneyeke wekî ya di vê qisseyê de cihbicih bike. Lewra ew bi hukmên zahirî mûkellef û pêbend e. Ji lewma zatên mezin ên xwedî îlmê qelbî jî, heta sebebên zahirî teşekkul nekin, ew nakevin bizavê û ew ji dinyaya sebeban jî cuda nabin. Naxwe tixûbên hukmên şer'î, ji bo herkesî pîvanên jêneger in.

Mûsa -eleyhisselam- pêğemberekî xwedî şerîat bû û ew bi tetbîqkirina şerîata xwe hatibû wezîfedarkirin. Xizir -eleyhisselam- jî di hundurê îlmekî ku Xuda jê re dabû zanîn de hereket dike. Wate tişta ku wî dikir, ne bi arzûya xwe dikir; lêbelê ew bi fermana Rebbê xwe dikir. Îtîrazkirina Mûsa -eleyhisselam- li Xizir -eleyhisselam- jî ji bo çavdêrîkirina li wan tixûban bûye ku Xudê Teala ew danîbûnê. Dîsa Rebbê Mezinê me bi xwe ye, yê ku ev qisse di Qur'ana Pîroz de ji mirovan re daye zanîn. Naxwe ew bûyerên di qisseyê de, heke çendan ew wekî ku ew bi zahirê xwe ji bo rastîyên şer'î mûxalif û dij werin dîtin jî lêbelê di heqîqetê de ew tezahurên ferqdar in ku hev û din temam

541. Beqere, 2/216.

dikin. Dema Hezretê Mûsa -eleyhisselam- sirrê van tecellîyan hîn bû, dev ji îtîrazê berda. Wî fehm kir ku şerîat wekî bedenê ye û heqîqet jî wekî rûh e.. Ji ber ku qaîdeyên şer'î herkesî didin ber xwe, li ser wan şamil tên, bi sebeb ku pirranîya însanan ji heqîqetên batinî ne waqif in, naxwe mûkellefîyeta mirovan li gorî sebebên zahirî ye; ne li gorî heqîqetên batinî ne.

Li alîyê din digel ku gundîyan ew qewirandibûn û ew ji bo mûameleya xiraba wan bûbûne mûxateb jî dîsa Xizir -eleyhisselam- li wê mûameleya xiraba wan nemeyzand. Wî hîç ti menfîateke maddî ji wan hêvî nekir û wî rabû ew dîwarê ku dikir biherife, tamîr kir. Ew ev kir ji bo bide tebaruzkirin ku parastina sêwîyan çi qeder wezîfeyeke mûhîm û fezîleteke bilind e. Ji bilî vê jî ew îfadeyeke hikmeta zayî nebûnîya qezenca helal e. Bi rastî qezenca helala bendeyên salih, ji terefê Xuda ve tê parastin, ew zayî nabe.

Hezretê Osman -radîyellahû anhû- di bara vê gencîneya di bin dîwarî de van agahîyan dide:

"Xezîne lewheyek bûye, ji zêr hatibû çêkirin. Li serê ev heft setrenîvîs hatibûne nivîsîn:

1. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim ku mirinê zanibe û bikene.

2. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim ku zanibe dinya fanî ye û dilê xwe bixiyê.

3. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim ku zanibe her tişt bi qederekê hatiye tayînkirin lê ji bo tişta ku ji dest wî diçe jî ğemgîn dibe.

4. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim ku zanibe wê hesab ji wî were pirsîn lê dîsa ew mal kom dike.

5. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim ku digel agirê cehennemê dizane jî dîsa gunehan dike.

6. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim digel ku bi yeqînî Xuda dizane jî lê ğeyrê Wî zikr dike.

7. Ez ji wî kesî ecêbmayî dimînim digel bi yeqînî cennetê dizane jî lê dîsa îstîrahetê li dinyayê hêvî dike. Digel ew şeytanî wek dijmin dizane jî lê dîsa bi xebera wî dike."[542]

542. Îbn-î Hecer el-Esqelanî, Munebbîhat, rûp. 29.

Dîsa bi maneya şer'î ya di vê qisseyê de ji wî cihê bi hev û din gihana herdu deryayan ku Hezretê Mûsa û Xizir -eleyhimasselam- lê gihabûne hev meqsûd, Hezretê Mûsa di îlmê zahir de wekî derayekê ye, di îlmê batin de jî Hezretê Xizir -eleyhisselam- wekî deryayekê ye.

Hezretê Mûsa bi meqsûda tehsîla îlmê ledunnî dibe peyrewê Xizir -eleyhisselam- ji hêla lihevçûna mûnasebetên mirîd-mûrşidî ya di tesewwufê de jî pirr balkêş e. Ji vê hêlê ve dikare were gotin; heke kesek di îlmê de çi qeder wekî Hezretê Mûsa -eleyhisselam- kûr bibe jî dîsa ji bo tehsîla îlmekî ku bi wî re neyî divê li pêşberî sultanên maneyê dostên Xuda karibe di nav tewazû û mehwîyetê de li ser çokên xwe rûne û karibe îrşada wan taleb bike..

Dema ji Pêğemberê hezkirî yê me hate pirskirin, jê re hate gotin:

"-Ya Resûlellah! Dema em li meseleyekê rast bên ku em çareserîya wê di Qur'anê de û di sunnetê de nabînin bila em çi bikin?" Wî Nûrê Hebûnê ji wan re got:

"-*Wê ji fiqhzanan û ji abidan (salihan) bipirsin û wê li îstîşareya wan re erz bikin. Di wê mijarê de bi dîtin-nêrîna şexsî ya xwe amel nekin*."[543]

Alimê mezin ê fiqhê, yê mûctehid, Hezretê Îmam Şafiî ji bo îstîfadekirina manewî ji Hezretê Şeyban Raî yê ku kesek ji ehlê dil e, wekî talebeyekî bi edebeke mezin li ser çokê xwe rûdinişt û di hinek babetan de pê re îstîşare dikir. Şagirtên wî jî pirs jê kirine, jê re gotine:

"-Ya Îmam! Alimekî wekî te li ku ye, Şeyban li ku ye? Gelo hikmeta ev qeder hurmet û îltîfatê çi ye?" Wî Îmamê mezin ji wan re digot:

"-Kurên min! Ev zat, tiştên ku em nizanin, dizane!"

Ahmed bin Henbel û Yehya bin Main jî hinek meseleyên xwe dibirin ber destê Marûfê Kerxî û ji wî dipirsîn.

Însan ne ji bo îlmên zahirî, lê ji bo tehsîla îlmên qelbî diçe dev seydayên maneyê. Lewra ew, rêberên rêyên gihandina cem Xuda ne. Çawa gellek ji alimên mezin ên tefsîr, hedîs û fiqhê ji bo tesewwufê întîsab kirine û di babeta ziravîyên ku nezanîne de dostên Heq ji bo xwe bi rêber kirine. Her wekî Îbn-î Abidîn, Alûsî û yên wekî wan..

543. Heysemî, Mecmau'z-Zewaîd, I, 178.

Yek ji mezintirîn hiqûqnasên dinyayê Îmamê Ezam, Hezretê Ebû Henîfe jî ji sohbetên Hezretê Caferê Sadiq tefeyyuz kiriye (feyz wergirtiye).

Ev bûyera ku wê hurmeta mezina ku Hezretê Ebû Henîfe ji ehlê manewîyatê re digirt, şanî dide jî, pirr giring e:

Bi gotina; rojekê ji dostên Heq Îbrahîm bin Edhem rêya xwe bi Hezretê Îmamê Ezam dixe. Talebeyên li hawîrdorên Ebû Henîfe bi çavên biçûkbînî û ğerîbbînîyê li Îbrahîm bin Edhem nêrîn. Çi dema Îmamê Ezam ev rewş dît, bang li Îbrahîm bin Edhem kir, jê re wiha got:

“-Kerem bike seydayê me, we şeref daye dîwana me!”

Îbrahîm bin Edhem bi edayeke mehcûbane silav da û derbas bû. Çi dema Îbrahîm bin Edhem ji wir çû, talebeyên li hawîrdorên wî ji Îmamê Ezam pirs kirin, jê re gotin:

“-Ev kes, ji kîjan hêlê ve ji sifetê seydatî û mezinatîyê re layiq e? Zatekî wekî we çawa jê re dibêje; seydayê me?”

Vêca Îmamê Ezam nefsbiçûkîya bilinda xwe şanî da û ev bersiv da pirsa wan:

“-Ew, bi awayekî daîmî bi Xuda re mijûl e, em jî bi karê qîl (hatiye gotin) û qalê (wî gotiye) re mijûl in..”

❁

Li alîyê din wekî ku di her babetê de wisa ye, di tehsîla îlmê ledunnî de jî divê mirov wan edeb û erkanên ku bi tayîna îlahî hatine danîn li ber çavan bigre. Yek ji giringtirînê van edeban jî wek hestkirina bi bêçaretî û hîçîtîya xwe li xwe kirina tewazû û nefsbiçûkîtîyê ye.

Çawa Mûsa -eleyhisselam- digel ku pêğemberek ji pêğemberên “ulu’l-ezm” e û ji bo şanê «**Kelîmûllah**» jî bûye mezher, dîsa wî negotiye; “divê ez bi qewmê xwe ve mijûl bibim, Tewrat ji min re bes e, ji xwe ez yek ji mûx-atebê wehyê me, heke ez ji Cenabê Heq bixwazim, Ew dikare vî îlmî jî li min hîn bike…” lêbelê wî tewazûyeke bilind şanî daye û ji mirada îlahî re bûye peyrew.. Bi vî awayî, wî di vê babetê de ji mûkemmelîyeta pîvan û bizavê nimûneyek ji însanîyetê re pêşkêş kiriye.

Çawa gotina wî: “**-Ji bo peydakirina wî alimî heke pêwîst bike ez bi biryar im ku bi salan birêve biçim**.” Delîleke eşkere ya vê ye. Ev tewazûya

ku Hezretê Mûsa -eleyhisselam- ji Hezretê Xizir-eleyhisselam- re şanî daye, ji bo her talibê îlm û marîfetê nimûneyeke sipehî ye.

Heke Cenabê Heq bixwesta, derhal Xizir û Mûsa -eleyhimasselam- li hev rast dianîn. Haleveku Wî xwest wan herduyan di dawîya rêwengîyeke zehmet û bimeşeqqet de li hev rast bîne. Naxwe di vê rê de "lutfa îlahî" di nav eşq û îstiğraqê de ezm, biryardarî û ğeyretê pêwîst dike.

Di heman demê de ev halên di navbera Hezretê Mûsa û Xizir de îşaret pê dide; divê îlmê batin jî ji sebeb û usûlê re wek guncaw ji seydayekî were girtin. Yanî ev îlm bi pirranî mirov bê sebeb, bê rêber û bê mûrşid pê nagihe. Lêbelê wekî Weysel Qeranî mirovên "**Uweysî meşreb**" mûstesna ne. Di vê rê de ji bo gihiştina meqsûdê îhtiyac bi ezmeke mezin û himmeteke gewre heye.

Li alîyê din xwasta Hezretê Mûsa ji bo tehsîlkirina îlmê ji Xizir -eleyhisselam- dibe ku pirseke wiha bîne aqilê mirovî; "çawa çêdibe ku welîyek, dikare dersê bide pêğemberekî mezin?"

Ha di vê rewşê de divê mirov li vê babetê miqate be; xwasta Hezretê Mûsa -eleyhisselam- ji bo tehsîlkirina îlmê ji Xizir -eleyhisselam- nayê vê maneyê ku ti îlm û marîfeta wî nebû û ti pareke keşf û îlhaman jê re nehatibûne lutfkirin. Ev hal, dibe wekî di babetekê ji babetan de tehsîlkirina ji yê kamiltir.

Mesela dîrayet û qabilîyeta zanistî ya Mîmar Sînan di mîmarî û avasazîyê de hîç şubhe nîn e ku ji dîrayet û qabilîyeta zanistî ya hemû senatkarên ku di înşaata Mizgefta Suleymanîye'yê de kar kirine, çêtir û jîrtir bû. Naxwe nezanîna bikaranîna hunera mermerçîtîyê ya Sînan di wê mizgeftê de bi qeder mermerçîyekî ji bo wî qusûr nayê jimartin. Lewra ew senatkar jî di bin talîmata Sînan de ne.

Li ser vî esasî, naxwe bi sebeb ku mûddeteke diyarkirî Hezretê Xizir -eleyhisselam- seydatî ji Hezretê Mûsa -eleyhisselam- re kiriye, mirov nikare bibêje; Xizir ji Mûsa çêtir e. Di heddê zatê xwe de li vir mûqayesekirina çêtirbûnîyê jî ne mijara axaftinê ye. Lewra Mûsa -eleyhisselam- û Xizir -eleyhisselam- bi awayekî ku qiyasê qebûl nake di newalên ji hev ferqdar de ne. Di vir de hikmet, ji bo temamê însanîyetê şanîdana vê heqîqetê bû; li hemberî îlmê îlahî pêğember jî û hemû mexlûqat jî di nav bêçaretî û nekarînê de ne.

Pêğember jî digel beşer bûnîya xwe, ew kesên bijarde ne, ku ji wehya îlahî re bûne mezher û xuyageh. Ev bendeyên mûstesna, yên Cenabê Heqq, gunehan nakin. Lêbelê ew jî bi beşer bûnîya xwe kêm caran dikevine wan xetayên ku ji wan re “zelle” tê gotin. Cenabê Heq bi vî awayî bêçaretîya beşer bûnîya wan di bîra wan tîne û di pirranîya caran de jî bi keyfîyeteke ji me ve mechûl û naxuya wan terbîye dike. Sedemê vê ketina wan ya zelleyan jî geh ji bo zahirbûna hukman e, geh jî ji bo ew ji însanîyetê re bibin emsal e. Li vir Mûsa -eleyhisselam- jî wê li hemberî bêdawîya îlmê îlahî bêçaretîya îlmê însanî fehm bikira, wî yê bidîta ku çendîn îlm hene hê jê re nehatine ragihandin.. Însanîyeta ku heta bi qiyametê were jî dê gellek îbretan ji qisseya wî bigre.

Bi rastî pêğember jî digel xwedîbûna xwe ji bo qudret, şîyan û selahîyeteke mezina wekî pêğembertîyê jî bes bi qeder ku ji wan re hatibe bexşandin ji îlmê waqif bûne û bes bi qeder ku Heq Teala ji wan re lutf kiribe, karîne ji ğeybê agahdar û mûttelî bibin. Ji ber ku îlmê ledunnî wehbî ye/dana Xuda ye, ew jî bes tişta ku Cenabê Heq ji wan re dabe zanîn, dizanin û tişta ku Cenabê Heq ji wan re nedabe zanîn jî, nizanin. Çawa Şêx Sadî-yê Şîrazî di berhema xwe ya bi navê *Gulistan*ê de wekî ku derbas bûye, bi gotina wî kesek tê cem Hezretê Yaqûb û jê dipirse, jê re dibêje:

“-Ey mirov qelbê wî mûnewwer, pêğemberê aqilmend! Te bêhna gomlekê Yûsuf, ê ku ji Misrê dihat, kir; lêbelê te, çima dema ew li ber serê te di bîrê de dihat avêtin, nedît?”

Yaqûb -eleyhisselam- ev bersiv dayê:

“-Ew nesîbên îlahî yên ku em gihane wan, wekî birûskên lêxer in. Ji ber vê, carina heqîqet wek bi mirada îlahî ve bend ji me re eyan dibin, carina jî ji ber me têne sergirtin!..”

Çawa dema Mûsa -eleyhisselam- jî îlmê ji Xizir -eleyhisselam- daxwaz dike, ew tabîra ku bikaranîye bi vî awayî ye: “**Îlmê ku ji te re hatiye dayîn**.” Wate divê îlm, ne ji bo bendeyan lêbelê ji bo Heq Teala were îzafekirin (wate neyê gotin; îlmê mirovan lêbelê were gotin; îlmê Heq Teala). Lewra serkehnîya mûtleqa hemû îlman Ellahê Ezîmûşşan e. Ew, ji bo mirovê ku dixwaze, bi qeder xwestina xwe ji îlmê xwe jê re îhsan dike. Ew, ji bo tehsîla hinek îlman hinek sebebên zahirî bi wasîte dike, hinek îlman jî ew bi xwe ji bo qelbê bendeyê xwe lutf dike.

Li alîyê din bende, dema bi rojî be û bi sehwê (bi jibîrkirinê) tiştekî bixwe, rojîya wî naşikehe, xirab nabe. Aynî wekî vê Hezretê Mûsa -eleyhisselam- jî ew soza ku dabû Xizir -eleyhisselam- jibîr kiribû û îtîraz lê kiribû, ji lewma ji bo pevrebûna wan ya di rêwengîya wan de nebûbû asteng û manî. Lêbelê Hezretê Mûsa -eleyhisselam- nesîbê xwe yê ku îhtîmal hebû ji vî îlmî jê re were -digel ku ne mecbûr bû jî- dîsa bi heyecana mehcûbîyetê got:

“**-Heke ez piştî vê tiştekî ji te pirs bikim, êdî tu min bi xwe re nebe**.”[544] û bi vê gotina xwe rêwengîya xwe bi şertê ve girêda, di encamê de nesîbê wî bi vê qederê sînordar ma.

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Xuda rahma xwe li Mûsa bike. Heke wî karîba sebr bike, Ellah Teala bi wasîteya wan (çendîn) bûyer (ên zehf esrarengîz û ecaîb) ji me re didane zanîn*.”[545]

Naxwe di vê rê de esas ev e; mirov bibe ehlê sebr û temkînê.

Yek ji nirxandinên ehlê tesewwufê bi vê qisseyê re elaqedar wiha ye:

Li gorî hatiye rîwayetkirin, ew gêncê ku di vê rêwengîyê de bi Hezretê Mûsa -eleyhisselam- re yawerîtî dikir, Yûşa bin Nûn bûye. Ew jî kurê xweha Mûsa -eleyhisselam- û yek ji wan kesan bû ku îman pê anîbûn. Yanî ew yek ji pêşengê eshabên wî bû. Ev zat, di piştî wefata Mûsa -eleyhisselam- de jî bûye xelîfeyê wî.

Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî di rêwengîya xwe ya hicretê de ji bo xwe wek heval û yawer Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- tercîh kiribû. Mezinê me di bara Hezretê Ebûbekr de di hedîsa şerîfa xwe de gotiye; “*duduyê duduyan ku sisê yê wan jî Xuda ye*.”[546] Ew çêtirînê ummetê ye. Ev nimûne, giringîya dostanîyên rasteqîne yên ji bo rizaya Xuda di rêya manewî de didin tebaruz û xuyakirin.

Ev qisseya Mûsa -eleyhisselam- ku bi hezar û yek sirran tije ye jî ji naveroka îlmê ledunnî sade çend nimûneyan ji me re radixin ber çavan.

❀

544. Kehf, 18/76.
545. Mûslim, Fezaîl, 170; Buxarî, Tefsîr, 18/2.
546. Buxarî, Eshabu’n-Nebî, 2.

Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa xwe de wiha gotiye:

"*Hîç guman nîn e ku ez tiştên hûn nabînin, dibînim û tiştên ku hûn nabihîzin, dibihîzim. Asîman (adeta) dike qirçe qirç û heqê wî heye bike qirçe qirç jî. (Lewra), li asîmanî cihê çar telîyan (vala) nîn e ku melaîketek enîya xwe ser wî cihî nedeyne û ji Xuda re neçe sicûdê. Ez bi Xuda sûnd dixwim; heke ew rastîyên ku ez dizanim we zanîbûna, hûn hindik dikenîn û gellek digrîn.. (Hûn ji malên xwe) derdihatin diçûne cihên bilind û we bi dengê bilind zarzar ji Xuda dikir*."

Ebû Zerrê Ğifarî -radîyellahû anhû- yê ku ev hedîs guhastiye, neqil kiriye, li hemberî van gotinan, gotiye;

"-Wellahî ji dil û can min xwest ez bibim dareke ku hatiye birrîn!."[547]

Hinek sehabîyan jî hestên bêçaretîya xwe ya di okyanûsa heyret û dehşetê de ku li hemberî heqîqetên ledunnî ketibûnê li van peyvan bar kirine û bi rêyên curecur anîne zimên:

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- gotiye:

"Xweşî ji te re be çûko, min ji dil û can dixwest ez jî wekî te bim, tu li ser darê datînî, tu bi nikilê xwe fêkî dixwî, piştre tu difirî, ne hesab li ser te heye, ne jî ezab! Wellahî min ji dil û can dixwest ez darek li ber kevîya rê bim, hêştirek di ber min de bibûre, min bigre, min bixe devê xwe û min bixwe."[548]

Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- gotiye:

"Xwezî ez takek giya bûma! Xwezî ez ne tiştek bûma!"

Dêya mûmînan, Hezreta Aîşe -Xuda jê razî be- jî gotiye:

"Xwezî ez pelek ji vê darê bûma!"

Ev rewşa ku ew li hemberî qudret û ezameta Xuda du tew kirine, meqamê bêçaretî û tirsê ye.

Ji eshabê kîram Haris bin Malik el-Ensarî -radiyellahû anhû- di sohbeta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de bi wecdê tije dibû û di halê

547. Îbn-î Mace, Zuhd, 19.
548. Îbn Ebî Şeybe, Mûsannef, c. 7/91.

îstiğraqê de dijîya. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- sibehekê jê pirs kir, jê re got:

"-*Ya Harîse, çawa li te bû sibeh?*" Harîse -radîyellahû anhû- jî wiha bersiva wî da, jê re got:

"-Wek mûmînekî heqîqî li min bû sibeh!"

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- vê carê jê re got:

"-*Her hal û hereketeke te delîleke xwe heye. Vêca delîla heqîqeta îmana te çi ye?*"

Harîse -radîyellahû anhû- jê re got:

"-Ya Resûlellah! Dema min destê xwe ji dinyayê kişand bû ku naverojên min tî û şevên min bêxew dibûrin. Ez bûme wekî ku bi eşkerehî erşê Rebbê xwe dibînim. Ez bûme wekî ku ehlê cennetê yên ku diçin serdana hev û ehlê cehennemê yê ku ji hev re bûne dijmin, dibînim."

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

"-*Temam ya Harîse! Vî halê xwe mûhafeze bike! Tu kesek î, ku Xuda dilê te bi nûr kiriye*."[549]

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dîsa di bara Harîse -radîyellahû anhû- de gotiye:

"*Heke kesek bixwaze mirovekî ku Xuda dilê wî bi nûr kiriye, bibîne, bila li Harîse binêre*."[550]

Hezretê Mewlana, di malikên xwe de bi zimanê dilî yê xwe vê bûyerê wek temsîlî wiha vedibêje:

"*Hadîse -radîyellahû anhû- ji Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- re got:*

*«-Ma ez tişta ku min dîtiye, vebêjim?» destûrê dixwaze û destpê dike, vedibêje:*

549. Heysemî, Mecmau'z-Zewaîd, I, 57.
550. Îbn-î Hecer, el-Îsabe, I, 289.

*«-Ya Resûlellah! Ma ez roja mehşerê ku însan bawer dikin ewê sibê çêbibe, îro li holê deynim. Ma ez hemû sirrên heşr û neşrê eşkere bikim, li holê deynim. Ferman bike, bila ez perdeyên van sirran bidirrînim. Bila cewhera hikmetên îlahî yên di hundurê min de wekî tava asîmanan biberiqînin!»*

*«-Ya Resûlellah! Ferman bike, bila ez vebêjim; kî zanîne di navbera gemar û mekrohîyên dinyayê de wekî zêrê xalis û pirlanta bimînin; kî bi rengên sor û reş ên kufrê zengar girtine.»*

*«Bila di ronahîya zewal-nebera pêğembertîya te de heft kendalên nîfaqê eyan bikim.»*

*«Bila ez cilên ku li axretê wê şeqawetmend li xwe bikin, ji xelkê re şanî bidim. Bila ez dengê daholên ku wê li wir ji bo pêğemberan werin lêxistin bidim bihîstin.»*

*«-Bila ez hewzê kewserê yê ku bi ser ve diçe, ji wan re şanî bidim, bila ava wî bi ser rûyê xelkê de were reşandin û bila dengê wê jî biçe guhên wan!»*

*«Bila ez bi eşkerehî lezûbeza kesên tî ya li hawîrdorên wî hewzî şanî bidim! Milên wan li milên min dikevin. Bangkirinên wan ji hev re têne guhên min!»*

*«Cennetî ji keyfxweşîyên xwe li pêşber çavên min hev û din hemêz dikin û hev mûsafeha dikin.»*

*«Cehennemî jî bi awazên ax û waxên xwe dikin feryad û fîğan adeta wê guhên min kerr bikin!»*

*«Ev hinek îşaret in ku min ji kûrahîyê gotine. Ezê hê jî bibêjim, lêbelê ez ditirsim Resûlê Xuda -sellellahû eleyhî we selem- li erza min bide!.»*

*Wî wek ğerqbûyê sekere'yê (serxweşîya) manewî wiha digot. Ew bi wecdeke nehatî dîtin ji xwe çûbû, (adeta) şiûra xwe winda kiribû, ketibû halekî ku hemû sirran eşkere bike.*

*Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo wî ji vî halî şîyar bike, jê re got:*

*«-Xwe bi ser hev de bide! Huş bibe!» berstika Hezretê Harîse kişand û wiha got:*

*«-Bi xwe were! Bi hefsarê zimanê xwe bigre, tu ketî halekî ku tiştên nayêne gotinê, tu wan dibêjî. Ayneya rûhê te, ji qewlikê xwe derketiye. Lêbelê*

*jibîr neke ku eşkerekirina sirrên tu bi wan gihayî, ji hezim nekirina wan e. Navek ji navên Xuda jî Settar e. Vê bizane û seadeta wesifîna bi vî sifetî biparêze û ji bo hezim-nekirinekê nebe qurban!*»

Wekî ku hevkêşîyeke îlahî di her zerreyeke kaînatê de heye, bende mecbûr e mûwazene û îtîdalê li hemberî tecellîyên alema rûhî jî biparêze. Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- çawa di her babetê de ji bo ummeta xwe ciwantirîn nimûne ye, ew di nuqteyên zirweya rûhanîyetê de jî ji derveya pîvanan neçûye, ji îstîqametê cuda nebûye.

Di hinek zemanan de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi feyza manewî wisan tije dibû ku maweyeke/mûddeteke dirêj tehemmulkirina vî halî mûmkin nedibû. Nexasim di esnaya nizûla wehyê de fewqelade îzdîrab dikişand, wekî daneya durran xwêhdan dida. Wî di gihiştina hinek sefhayên feyz û îstiğraqê de digot:

“*Ya Aîşe, rûhanîyetê ez îstîla kirim. Were, piçekê bi min re biaxive!*”[551] û ew li keş û hewaya beşerî vedigerîya.

Bi berevajî vê dema dinya ğalib dibû jî digot:

“*Ya Bîlal! Heydê ji bo nimêjê bang bide û bila em keyfxweş bibin!*”[552] Wî bi vî awayî hevkêşî di navbera keş û hewaya beşerîyet û rûhanîyetê de temîn dikir.

Çawa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di alema hundurîna xwe de bi endaz bû, li hemberî derve jî tim û daîm li ser îtîdalê tevgerîyaye. Heqîqetên bilind ên di ser aqil re ku Xudê Teala jê re lutf kirine, ji bilî ehlê wan ji ti kesî din re nedane zanîn. Ji ber giringîya vê babetê Hezretê ‘Elî -radîyellahû anhû- jî gotiye:

“Bi awayê ku însan jê fehm bikin bi wan re biaxivin.”[553] Naxwe ev jî ne bi qeder ku aqilê wê pê digihe, lêbelê bi qeder ku aqilê wan pê bigihe û ew jê fehm bikin, ji wan re bibêjin.

Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- wek bi heqîqetên sirrdar re elaqedar bi endîşeya ku xelk wê fehm neke, hinek hedîs rîwayet nedikirin. Wî ev yek jî wiha îfade kiriye, gotiye:

551. Binêrin. Mûnawî, Feyzu’l-Qedîr, V, 228.
552. Ebûdawud, Edeb, 78.
553. Buxarî, Îlm, 49.

"Min ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- du firağ (ji îlmê tije) hefiz kirin. Min firağek ji van ji xelkê re weşand. Herçî ewê din e, heke min ew weşandibûya, ev serê min dihate birrîn."[554]

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Heke hûn hikmetê ji ehlê wê pê ve bidin yên din, we zulim kiriye*."[555]

Ev cumle bi mefhûma mûxalifa xwe vê maneyê îfade dike:

"Heke hûn hikmet û sirran ji ehlê wan men bikin, di vê rewşê de we dîsa zulim kiriye."

Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"**Xuda kê bixwaze hikmetê dide wî. Hikmet ji kê re were dayîn jî, bêşiwar xêreke pirr jê re hatiye dayîn. Lêbelê bes xwedî aqil difikrin û îbret digrin**."[556]

❁

Ehlê temkînê mezinan, nesîbê ku ji vî îlmî ji wan re hatiye dayîn, ew li îdrakên teng nehatiye barkirin. Lewra ev sirrên mehrem ku aqil ji fehmkirina wan bêçare dimîne, divê ji ne-ehlên wan werin veşartin. Çawa Hellacê Mensûr ê xwedî van sirran ku Xuda ew sade ji bo hinek bendeyên xwe yên mûstesna lutf kirine, ji ber ku wî gurzikekî biçûçik ji wan tecellîyên di qelbê xwe de îfşa kirine, xwîna wî bi heder çûye û ew bi îdamê hatiye cezakirin.

Hellac xwe di deryaya wehdetê de noq kiribû, dema ew di wecdeke kûr û halê sekrê (bêhişîyê) de bû, xwe bi ber girdab û gera dijwara tecellîyên li ser xwe de berdabû û bi feryad gotibû; "Ene'l-Heq!" Sirreke mehrem bi vî awayî li ser zimanî hatiye rijandin, bûye sebeb ku ew bi qistasa aqilê însanan werin pîvan û aqil, nekarîye vê nezaketê bikişîne.

Ev halê Hellac, di gellek welîyan de jî hatiye dîtin. Lêbelê ev, ne tesbîtek e, ne jî teşxîsek e. Ev, halekî sade berwext e, sade di wan welîyan de zihûr dibe, dixuyê ku dema ew di meqamê fenafillah de bin, halê xwe yê temkînê mûhafeze nakin û rîayeta aqilî winda dikin. Di vî halî de aqil qistasa zahirî û alema pîvanan terk dike, yanî ew têde xilas dibin, bi şerîatê li ser xwedîyê

554. Buxarî, Îlm, 42.
555. Darimî, Mûqeddîme, 34.
556. Beqere, 2/269.

van halan ti teklîf û binbarîyek nîn e. Lewra li gorî pîvana îlahî, şertê yekemê mesûlîyetê “biaqil-bûn” e.. Herçî aqil e, ti pareke wî di gotinên wiha de nîn e. Naxwe bi aqil îdrakkirina van halan ne mûmkin e.

Ji ber ku halên wiha bi ğeleba cezbê çêdibin, bi tabîra tesewwufî ji bo mirovên wiha “meczûb”[557] tê gotin. Ev halên wan ku nakevin nav endaz û pîvanên zahirî, çendan ew li cem ehlê wê mazûr werin dîtin jî lêbelê mirov nikare teqbîhkirina wan halan ya ji terefê mirovên ewam ve jî şermezar bike. Ji lewma di bara peyv û serencama Hellacê Mensûr de ku me di vê mîsalê de behsa wê kiriye bi berdewam wiha hatiye gotin: “Hellac jî heqdar e, ewên ku ew kuştine jî heqdar in.” Bi vê sedemê ye ku di tesewwufê de bi zehfî “temkîn” hatiye tewsîye kirin û meczûbî na lêbelê ğeyretkirina ji bo bûna bicazib meqbûl hatiye jimartinê.

Li gorî rîwayetê, cellad Ebû’l-Haris, ji bo cihbicihkirina fermana îdama wî çûbû pêşber Hellac û derbeke dijwar lê dabû. Ew derbeke ew qeder dijwar bû ku bêhvila Hellac û rûyê wî perçe perçe bûbû. Di wê gavê de Şiblî jî bi hander û saîqeke ji yên li hawîrdorê re mechûl dikir qîrewîr, cubbeyê xwe perçe perçe kiribû û ji xwe çûbû.

Ev tecellîya di Hellac de halek e. Dema ev hal dibûre Heq Heq e, tişt jî tişt in. Şêx Şiblî dibêje:

“-Em, bi Hellac re di heman qunağan re derbas bûn. Ji min re mecnûn gotin û ez ji halê min re hiştim, ji wî re jî gotin; aqilê wî heye û ew îdam kirin.”

Dîsa Şiblî dibêje:

“Dema Hellac hate îdamkirin ez bi şev çûme ser mezarê wî. Min heta sibehê li wir nimêj kir. Dema bû wextê seherê, min wiha mûnacat kir:

«-Îlahî! Ev, bendeyekî Te yê mûmîn, arif û mûwehhid bûye. Hikmeta mûsîbetên ku te dane wî evdê xwe çi ye?»

557. **Meczûb**: Ew kes e ku li hemberî cezba îlahî aqilê wî lawaz bûye, lêbelê ew di alema qelbî de tim bi Cenabê Heq ve bend e. Meczûb, heke ji bo jîyana însanî bi ber halekî ve hatibin kişkişandin ku ew werin ğerîb dîtin jî ew bi îdraka qelbî û têgihiştina derûnî ji gellek mirovên jirêzê bûrîne.. Ew bûne her wekî ku îrade, îdrak û îz‘anên wan di voltajekê de hatine girtin ku ji tehemmulê bûrîbin. Yek ji mîsalên Bêçaretîyê li hemberî tecellîyên Zat jî di heyata beşerî de ev kes in.

Di vê esnayê de xewê zora min bir. Min di xewna xwe de dît ku wa ye qiyamet rabûye. Min li wir ev axaftina Heqq bihîst:

«-Ji ber ku wî sirrê me di navbera naehlan de belav kiriye, me ev îbtîla anîne serê wî!»"

Wekî ku ji van îfadeyan jî tê fehmkirin; ti mehzûrek di gihiştina sirra heqîqetê ya bi fenabûna di Heq de nîn e; lêbelê mehzûr di vê de heye ku mirov bi halê serxweşîya manewî ya xwe wan sirran ji naehlan re îfşa bike ku bi gihiştina wan sirran mirov bi ber wê ve tê kişkişandin.. Ji lewma çewt û şaş e ku mirov hinek halên îstisnayî û serveçûnên heyecanî yên hinek sofîyan ku ji rîayet nekirina vê pîvanê tên, bi gelemper bike û bi xirabî ji mûtesewwifên rasteqîne û dostên Heq biaxive.. Lewra bi xirabî axaftina ji wan bendeyên ku Xuda ji wan hez dike û negirtina xatirê wan, ji cehaletê û bê besîretê tê. Ji xwe hîç ti mûmînek nikare wan red bike.

Naxwe di rêya manewî de hîma bingehîn, xwe girtina sağlema bi pîvanên mûqeddes e; lêbelê red nekirina esrarên ebedî ye jî. Li cem vê, îcab dike mirov ji sirrên veşartî yên di navbera Cenabê Heq û bendeyên wî de jî neaxive.

Ev hemû tecellî ne, ku di halên îstiğraqa rûhî û ji aqil biwêdetir de hatine jîyîn. Çawa dema halên taybetî yên wiha werin derbaskirin û li aqilê selîm were vegerîn, ev cure serveçûn, cihê xwe ji sikûnetê re dihêlin.

Hinek dostên Heq jî bi tesîra tecellîyên mûstesna yên ku li ser rûhên wan ğalib hatin, ber bi hinek bizavên neadetî ve hatine kişkişandin. Lêbelê dema aqil û îrade ji dest çûne û ew ji wê alemê şiyar bûne, dîsa îstîqametên esilî yên xwe dane dewamkirin.

Carekê ji Cuneyd -quddîse sirruh- wiha hate pirskirin:

"-Hinek ewliyaullah, dikevin halê wecdê û diderkevine derveya adetî. Tu di bara vî halê wan de çi dibêjî?

Cuneyd -quddîse sirruh- wiha bersiv da:

"-Wan ji halê wan re bihêle, bila ew bi Xuda re hizûrê bibînin û bigihin rehetîyê. Ji bilî babetên ku şerîatê bi eşkerehî qedeğe kiribin, wekî din halên wan şermezar neke. Diqqet bike ku vê rê, cîgerên wan peritandine, se'yî û ğeyretê jî ew westandine û wan çendîn îbtîla tehemmul kirine. Ew ji bo derbaskirina halên ku têde ne, van dikin. Di vê de jî ti mehzûr nîn in."

Li gorî rîwayetê berî Hellacê Mensûr were îdamkirin wî ev dûa kiriye, di aynî zemanî de dûaya wî sewîya manewî ya wî û îxlasa wî jî radixe ber çavan. Wî wiha dûa dikir, digot:

“Xudayê min! Bendeyên Te ji ber nêzîkbûnîyên xwe yên ji Te û ji ber pêbendîya wan bi dînê Te kom bûne ji bo min bikujin. Li wan bibûre. Lewra heke ew sirrên ku Te ji min re lutf kirine, Te ji wan re jî lutf kiribûna, ew di bara min de wiha nedihizirîn. Heke ew tiştên ku te ji wan veşartine, Te ji min jî veşartibaya, min ew wiha îfşa nedikirin. Ya Rebbî wan efû bike! Lewra ew min digihînin Te.”

Ji wan kesên ku di alema maneyê de halê Hellac seyr dikin tê guhastin ku dema wan ew li ser sêpêyan daleqandin, Îblîs hate cemê, jê pirs kir, jê re got:

“-Te «**ene**»[558]yek got, min jî «**ene**»yek got. Çawa çêdibe ku ji lewma rahm li te dibare û li min jî lanet dibare!”

Hellac wiha bersiva Îblîs da, jê re got:

“-Te, bi gotina «Ene» xwe ji Adem çêtir dît. Te kibra xwe li holê danî. Min jî got: «Ene’l-Heq», min xwe di Heq de tine kir. Kibr li holê danîna ezperestîya xwe ye, nîşana cehennemê ye. Herçî ji holê rakirina ezperestîya xwe ye, yanî di Heq de tinebûn e, ew jî îfadeya «hîç»îtîyê ye. Bi vê sedemê rahm li min barî, li te jî lanet û zillet barî.”

Îbrahîm bin Fatiq, dema çûye ji bo Hellac zîyaret bike, ew neqil dike ku Hellac ev nesîhet lê kiriye, jê re gotiye:

“-Kurê min! Hinek kafirtîya min bawer dikin, hinek jî dibêjin; ez welî me. Ewên ku kafirtîya min îlan dikin, ji yên ku dibêjin; ez welî me, hem li cem Xuda, hem jî di nêrîna min de bêhtir hezkirî ne.”

Dema min jê re got:

“-Çima tu wiha dibêjî?” Wî ji min re got:

“-Ewên ku bawer dikin ez welî me, ji ber zena xweşika ku di bara min de dikine, lêbelê ewên ku dibêjin; ez kafir im jî bi sebeb pêbendîya bi dînê xwe, wiha dikin. Ew kesê ku ji dînê xwe re sedaqetê şanî dide, ji kesê ku sade zena xweşik dike, li cem Xuda bêhtir hezkirî ye.”

558. **Ene**: Di Erebî de bi maneya “ez, min” tê, cihnavka şexsê yekem e.

Hezretê Mewlana jî ji tecellîyên di Hellac de zehf biwêdetir çûye, gotiye:

“Heke Hellac, ji tecellîyên di navbera min û Rebbê min de xeberdar bibûya, wî jî kevir li min dibarandin.”

Ev hal û yên wekî van, îfadeyên di Heq de tinebûnê ne, ku rijîyane, zahir bûne. Hezretê Mewlana fenafillahîyê di malikên xwe de bi vê teşbîhê îzah dike:

“*Dema tu çemê bêdawî yê jîyanê bibînî, ava xwe ya di kasê de, yanî vî emrê fanî yê xwe bixe ser çemê bêdawîtîyê! Ma av hîç ji çem direve?”*

“*Ava di kasê de, dema bikeve nav ava çemî, ewê li wir ji hebûna xwe rizgar bibe, ewê bibe ava çêm.*”

“*Dema wiha bibe, wesfê wê ava di kasê de, sifetê wê tine dibe, lê zatê wê dimîne. Êdî ji vê û pê de ewê kêm bibe, ne pîs dibe, ne jî bêhn pê dikeve.*”

Mewlana û ewên wekî wî ku xwedî qelbekî bi qiwama manewî gihane, ji ber ku her his û fikrê wan berî wî li hikmeta îlahî ye, Cenabê Heq adeta ji bo wan bûye ew çavê wan yê ku pê dibînin, ew destê wan yê ku pê radijin tiştan..

Mûtefekkirekî aşiqê Mewlana, bêçaretîya pirranîya însanan di fehm û îdrak-kirina halên derûnî yên Mewlana de wiha îfade dike, dibêje:

“Me feryadên wecda Mewlana Celaleddîn guhdarî kirin. Îmkan nîn e, em kûrahîya deryaya aramîya ku wî xwe têde noq kiriye, bibînin. Çi ji binê deryayê hatibe selixîn û hatibe li ser rûyê avê ketibe, em wê dibînin. Me ne evîna Hezretê Mewlana, lêbelê me sade feryadên evîna wî yên ku hatine zimanî, bidest xistine. Tişta ku em dixwazin bi zimanê vizzê xwe vebêjin, tev ji vê îbaret e. Sade wî xwe di deryaya hizûrê de noq kiriye. Ji bo me sade dengên ku ji bagera wecda wî dertên, mane. Heyhat! Em wan bi Mewlana zen dikin.”[559]

Eşq, wecd û halê îstiğraqê ummaneke/okyanûseke wisa ye ku cilwe û nazeke Rabbanî ye, sade ew ji ehlê wê re malûm e.

Dîsa Mûhyîddîn Îbn-î Erebî çendan bi awayê remzan be jî hinek ji vî îlmê sirran di rêzesatran de daye xuyakirin, ehlûllah jî qîmetekî mezin dane wî, heqîqetên sirran di derûna wan îfadeyên wî de ku ti kes nikare xwe bigihîne

559. Nûreddîn Topçû, Mewlana û Tesewwuf, rûp. 139.

gwîzeka wî, seyr kirine û ew bi "Şêxê Ekber" bibîranîne.. Herçî ewên ku ji alema batinî dûr in, ji ber ku nekarîne vê nukteyê/asêpirsê vekin, ew bi kufrê îtham kirine.

Heke dost û hevsirrek peyda nebe ku sirran tehemmul bike, hingê huşbûn ewla ye, baştir e. Lewra divê mirov bi qeder ku aqilê herkesî bigihîyê, jê re peyvan bibêje. Heke na, ji însanê ku wan fehm nake re behsa hikmet û marîfetê kirin, zulimkirina li heqîqetê ye.

Li ser vî esasî Mûhyîddîn Îbn-î Erebî -quddîse sirruh- gotiye:

"Ewên ku ji halê me re ne çavnas in, bila berhemên me nexwînin."

Hezretê Mewlana jî wiha dibêje:

"Min ev sirr, girtî û kurt gotine. Lewra zimanê yê ku hewl bide wan bi ferehî eşkere bike û îdraka yên ku guhdarî dikin jî, dişewitî."

Dîsa Hezretê Mewlana di *Mesnewî*'ya xwe de ku ew ji bo îstîdad û qabilîyetên ferqdar hatiye teqdîmkirin, ji bo îdrakên teng nekevin rêyên şaş, sirrên îlahî û heqîqetên mûcerred ên ku hatin fehmkirina wan zor e, yan bi qisseyên besît û mûşexxes vegotine, yan jî ew bi remzan nixumandine, ew sade ji ehlê wan re bi malûm kirine..

Bi xêra wan qisseyan ji bo mirovên ku kûrahîya qelbî ya wan nîn e, ziravîyên di maneya Mesnewî'yê de setr kirine, veşartine.

Mewlana -quddîse sirruh- wiha dibêje:

"Malikên min, ne malik in, cîhaneke maneyan e. Hezl û tinaza min jî ne tinaz e, biedeb-kirin e. Qisseyên min, ne peyvên besît û jirêzê ne, talîm in. Ji bo dan îzahkirin û dan îdrakkirina sirran e."

Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- bûyereke ku jê re bûbû şahid bi çavê xwe dîtibû, wiha vedibêje:

"Rojekê ez çûme hizûra pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-. Wî bi Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- re di bara tewhîda îlahî de sohbet dikirin. Ez di navbera wan de rûniştim. Ez bûme her wekî yekî ku hîç erebî nizane, min tiştek ji peyvên wan fehm nekir. Min ji Ebûbekr pirs kir, min jê re got:

"-Ev hal çi bû? Ma hûn tim bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re wiha sohbet dikin?"

Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- ji min re got:

“-Belê, carina dema ez û pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi tena serê xwe bin, em wiha sohbet dikin.” [560]

Însanekî wekî Hezretê Ûmer ew qeder jîr û zekî ku di dahîtîya wî de hîç şubhe nayê kirin, di vê mûbaheseya ku bi zimanê wî bi xwe hatiye vegotin, heke wî bi xwe di fehmkirina wê de zehmetî dîtibe, vêca bi qiyaskirina li ser vê, bi hêsanî tê fehmkirin ka wê halê însanên jirêzê çawa bibe..

Ha di sohbetên wiha de ku ew heqîqet di wan de têne keşfkirin, ji bo ewaman sirrên wan heqîqetan bi rêzesatran nayêne nivîsandin û îfadekirin, îfadekirina wan ji bo ewaman ğayet mehzûr hatiye dîtin. Lêbelê bi saya vê, heqîqetên wiha ji ewaman re sirr mane, ew sirf ji bo kesên ehl hatine guhastin û neqilkirin. Ji lewma dema ji kesên ku gihiştina wan bi kemalê tê zenkirin, tê behskirin, ev îfade tê bikaranîn: «**Qeddesellahû sirruhû**» yanî “Xudê Teala sirrên (alema hundurîna) wî ji her cure lekeyên manewî paqij bike.”

❁

Tesewwuf bi emanca xwe, ji ber ku bi alema qelbî ya însanan re meşğûl dibe, mecbûr e wê mehebbetê ku sebebê aferîna kaînatê ye jî wek peyrewa wê bikarbîne. Bi vê sedemê ew (tesewwuf), wek “**rêya eşq û mehebbetê**” jî hatiye wesifandin. Lêbelê eşq, ji ber ku serveçûnek e, dikare netîceyeke wekî lawazbûna îradeyê û kontrol nekirina wecd û heyecanê jî bi xwe re bîne.

Çawa mîsalek ji mehebbeta fereha di navbera pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û Caferê Teyyar de jî wiha ye:

Cafer -radîyellahû anhû- bi komeka sehabîyan re ji hicreta Hebeşistanê vegerîya, hate Medînê. Dema ew hîn bû ku Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li Xeyberê ye, ew ranewestiya û hê bêhna xwe nevedayî, yekser bi hesret li ser rêya çûna xwe ya Xeyberê dewam kir. Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- Cafer li pêşberî xwe dît, di keyfxweşîyê de wek ğerqbûyî got:

“*Ma ez bi fetha Xeyberê, yan jî bi hatina Cafer keyfxweş bibim?..*”[561]

560. Ji bo agahîyan, Ahmed bin Ebdûllah et-Taberî, er-Rîyazu’n-Nadra, II, 52, binêrin.
561. Îbn-î Hîşam, es-Sîre, IV, 3.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vegera ji "umretu'l-qeza"[562]yê de di mijara bila kî meyzandin û xwedîkirina sêwîya Seyyîduş-Şuheda Hemza Fatimayê bike aîdê xwe de, di encama mûzakereyên digel lêzimên xwe de ew ji bo Caferê Teyyar bi emanet kir. Wî enîya Cafer -radîyellahû anhû- maç kir, bi vê îltîfatê jê re got:

"*Bi aferîna xwe û exlaqê xwe tu çi qeder dişibihî min!*"[563]

Cafer -radîyellahû anhû- li hemberî vê îltîfata nebewî heyecaneke wisan ew girt ku bi dijwarîya keyfxweşîya xwe ji xwe çû. Wî destpê kir wekî zarokekî masûm leyist û wekî perwane û perperîkan di nav wecdê de li dora xwe fetilî.[564]

Ha însan, dikare bi îltîfateke bala'ya wiha bidestxistî jixwe biçe û sermest bibe. Aynî wisan dema ew bi tecellîyên îlahî bi îkram û lutfan bigihe jî dikare ji alema derveyî were selixîn û bikeve halê îstiğraqê. Ev ğayet tebîî ye. Ya mûhîm, mirov di nava vê lehîya heyecanê de jî ji endazên pêwîst ên beşer bûnîya xwe dernekeve û karibe hevkêşî û îstîqametê mûhafeze bike.

Ji bo mûhafezekirina vê hevkêşîyê îhtiyac bi rêberîya wan kesan heye ku di rêyên tesewwufî de îlmên zahirî û heyata menewî bi yek kirine.

Ewên ku bi peywira îrşadê mûkellef û binbar bin, heke negihabin qudret û sewîyekeke di îlmên zahirî de pêwîst, tehlûke di rêya eşq û mehebbetê de dîsa mezin e. Ji bo berterefkirina vê tehlûkê, di hinek terîqetên wekî "**Neqşîbendîyye**"yê de mûrşid ji wan kesan tên ku îlmên zahirî jî dizanin.. Bi vî awayî wan karîne xwe ji wan tehlûkên ku îşaret bi wan hatiye kirin, mûhafeze bikin..

Di ewlîyaullah de usûlên terbîyê cuda cuda ne. Neqşîbendîtî ku yek ji rêyên mezin ên tesewwufê ye, berî salikî bixe halê cezbê, pêşî wî terbîye dike. Hezretê Ebdulxaliq Gucdevanî gotiye:

"Heke Hellac, di zemanê me û terbîya me de bûya, bi destûra Xuda me ew ji ketina halê sekrê (serxweşîyê) diparast."

---

562. **Umretu'l-qeza**: Ew umre ye ku di wê sala Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- silha Hudeybîyê kirî de, nîyeta çûna umrê kiribû, lêbelê neçûbûyê û di sala piştî wê de wek qeza ew kiribû.
563. Buxarî, Meğazî, 43.
564. Ahmed bin Henbel, Musned, I, 108; Îbn-î Sa'd, IV, 739.

Di hinek terîqetan de dem bi dem ew serveçûnên heyecanê ku bi sebeb dijwarîya cezbe û coşînê têne dîtin, di nêrîna şerîatê de ji şemitîneke lingan îbaret in. Ev, tehlûka wê heyecan û coşîna di esilê xwe de meqbûl, şanî didin ku dema ew bikevin tixûbê zêdegavîyê.

❁

Eşkere ye ku bi îlawe li ser wesifên mûşterek ên pêğemberan her yek ji wan hinek taybetmendîyên wan yên xas ên fariq û cudaker jî hene. Zumreya ewlîyaullah jî li hemberî hev û din aynî wisa ne. Mesela ew dikarin di mîzaca celalî yan jî cemalî de bibin. Lêbelê ev hemû jî di alema qelb de Cenabê Heq di sûretekî ji îdrak û îhateya însanên jirêzê ferqdar de dizanin û ew, dest ji hemû fanî û fanîtîyan berdidin û hewl didin ji Wî nêzîk bibin. Ew di vê qada merîfetullahî'ya bêserî û bêbinî de bi awayekî daîmî bêçaretîya xwe îdrak dikin, dizanin. Digel wiha bûnîya xwe jî tev, çawa ne di heman qunağ û merheleyê de ne, aynî wisan ew bi heman wezîfeyê jî ne mûkellef û binbar in. Hinek ji wan di nîhayeta seyr û silûkê de li xelkê vedigerin. Ev bi îrşadê mûkellef in. Wekî ku me berî vêga jî îfade kiribû, pirranîya wan jî bi awayekî tedrîcî wekî mûallimekî ku ders dide, pirranîya heqîqetên ku jê waqif in, di mûnasebetên beşerî de wekî ku nizanibin, tevdigerin. Ji vî halî re wek kînaye, ewê ku tiştekî dizane; lêbelê wekî ku wî nizanibe tevdigere, bi tabîra "tecahula arifîn" tê îfadekirin.

Hinekên dîger ên wan jî ji ber ku bi îrşadê ne mûkellef in, ew di meqamê heyretê de dimînin û bi awayekî seraqetî di halê sikûtê, huşbûnê de dibin. Ewên wiha, li hemberî herk û darêjên qudreta îlahî wekî lal û bêziman in. Hinekên li hemberî mirovan wezîfedar jî adeta bi şelaleyên verêhtok werdigerin. Ji zimanên wan û dilên wan sirr û hikmetên îlahî destpê dikin, dirijin, têne zimên.

Di hinekan ji wan de jî ev hal, ne daîmî ne, guhêrbar in. Di heyata wan de safha û qunağên curecur dibin. Ji bo van halan nimûneyek ji tecellîyên di Hezretê Mûhemmed Parîsa de jî wiha ye:

Hezretê Mûhemmed Parîsa piştî nimêja eşayê miqdarekê li hewşa mizgeftê radiwestîya, piştî sohbeteke kurt ber bi xanîyê xwe ve li ser rêya xwe dewam dikir. Carina jî hinek halên wisan ji wî tecellî dikirin ku heta bi benga sipêdê li hewşa mizgeftê radiwestîya û adeta wekî ku cemedê ew girtibe wisan ji cihê xwe nediqeliqî, halê heyreteke kûr dijîya. Ew bi banga sipêdê re jî dubare diçû mizgeftê.

Wekî jîyîn û hissên van welîyan, helwestên wan li hemberî mirinê jî cuda û ferqdar bûne. Hezretê Mewlana ji ber peritîn û helîna bi eşqa îlahî, wî mirin wek “wuslet” û “şeva arûsê” teleqqî kiriye, wergirtiye; Hesenê Besrî -quddîse sirruh- jî di wî de bi sebeb ğalib hatina “xeşyetullah”îyê daîmî pê re ev endîşe hebû; gelo ezê di nefesa dawîn de di çi halî de bibim..

Agahîyên me tev di bara vî îlmê ledunnî de sînordar in, hinek girike nesîb in ku di pêşîya vî îlmî de ew ji tecellîyên di pêğemberan de hatine girtin û çendan piçek be jî ew ji tecellîyên curecur ên di welîyan de hatine girtin. Tabîî ye ku ew tecellî jî bi wê miqdarê hatine wergirtin ku karîne bi kelamî werin guhastin. Lêbelê heqîqeta mûtleqa vî îlmî, ji ber ku li cem Cenabê Heq e, bi maneya heqîqî ya wî fehmkirina wî, keyfîyeteke zehf zêde di ser tixûbên îdraka me re ye.

Fîraset, mûşahedekirina razên di pişt perdeyan de ye, yanî temaşekirina sirrên di pişt wan de ye. Lewra ewên ku karibin li nava sedefê binêrin, ferqê dixin durran.

## 2. FÎRASET

Fîraset, nûrek e, Xudê Teala ji kîjan bendeyê xwe hez bike, wê ji qelbê wî re lutf dike. Yanî di qelb de wek qabilîyeta îdrakeke manewî peydabûna halên wekî aqilmendî, zekaweta zehf zêde, hiskirin, zanîn û fehmkirinê ye. Fîraset, bi xêra wan hissên semîmî ku di qelb de diwelidin û bi saya wan îlhamên ku mirov bi wan digihe, rast texmîn û teşxîskirina rûyê hundurînê bûyeran û fikrên ku di qelban de dibûrine.

Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*Xwe ji fîraseta mûmînî biparêzin; lewra ew bi nûra Xuda dinêre.*"[565] Bêşiwar ew kesên ku karibin xwe ji ğurûra nefsa xwe biselixînin û bi nûra Xuda binêrin, dikarin bi vê fîrasetê bigihin. Di dîroka îslamê de ji bo vî halî gellek mîsal hene:

Hezretê Enes -radîyellahû anhû- li gorî rîwayeta xwe bi xwe dibêje; rojekê dema ez diçûme cem Hezretê Osman -radîyellahû anhû- min di rê de jinek dît. Sipehîtîya wê jinê hîç ji bîra min neçû. Ez bi vê fikra xwe çûme cem Hezretê Osman. Vêca dema Hezretê Osman -radîyellahû anhû- ez dîtim, ji min re got:

"-Ya Enes! Tu têyî vê derê haleveku di çavên te de şopa zinayê heye."

Hezretê Enes -radîyellahû anhû- li hemberî vê peyva wî şaş bû û dema di nav heyretê de jê dipirse, jê re dibêje:

"-Ma di piştî Resûlê Xuda de jî hê wehyî tê?" Hezretê Osman -radîyel-lahû anhû- jê re dibêje:

565. Tirmizî, Tefsîr, 15.

“-Ne xêr, ev besîret û fîraseteke rast e.” [566]

Ji xwe meşhûr e ku dîtin-nêrîna Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- di gellek babetan de bi ayetên ku piştre hatine re ahengdar bûne.

Çawa Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Di navbera ummetên ku berî we jîyane û çûne de kesên wisan hebûn ku îlham ji wan re dihatin. Heke di navbera ummeta min de jî yek ji wan hebe, hîç şubhe nîn e ku ew jî Ûmer e.*”[567]

**Ebû Ebbas bin Mehdî** wiha vedibêje:

“Dema min li çolê rêwengî dikir, min li pêşîya xwe kesekî serqot û pêxwas û li cemê meterê avê jî neyî, dît. Min ji xwe bi xwe re got; gelo ev zilam çawa nimêja xwe dike, ez fikrî min ku li cem vî zilamî bi navê nimêj û desmêjê tiştek nîn e.. Dema min wiha digot, zilam li min fetilî û ji min re ev ayeta ha: **“Zanibin ku Xuda, tiştên di nefsên we de dizane, bi vê sedemê xwe jê biparêzin.”**[568] xwend. Di vê esnayê de ez ji xwe çûm û ketim erdê. Dema ez bi xwe hatim, ji ber ku min bi wê nêrînê li wî zatî meyzandibû, min ef ji Xuda xwest û ez bi rêya xwe ve çûm. Dema ez birêve diçûm dîsa ew zat bi ber çavê min ket. Dema min ew jî dît, dilê min bi hissa heybetê tije bû. Ez li cihê xwe rawestîyam. Ew zilam li min fetilî û ev ayeta ha: “**Ew, tobeya bendeyên xwe qebûl dike, gunehên wan efû dike û tişta ku ew dikin, dizane.**”[569] û ew ji ber çavê min berze (winda) bû. Min careke din jî ew nedît.”

Zunnûn-ê Misrî -quddîse sirruh- jî wiha vedibêje:

“Rojekê, min xortek dît cilên wî kevn û pînekirî bûn. Heke çi qeder nefsa min nefret ji wî dikir jî dilê min şahidî dikir ku ew welî ye. Dema ez di navbera qelbê xwe û nefsa xwe de mam û di dema min dest bi fikrînê kir, ew xort ji sirrên min waqif bû, li min meyzand û ji min re got:

«-Ey Zennûn! Ji bo tu keviniya cilên min bibînî, li min nenêre! Durr di nav sedefê de dibe.» û ew ji wir bidûr ket û çû.”

566. Quşeyrî, er-Rîsale, rûp. 238.
567. Buxarî, Eshabu’n-Nebî, 6.
568. Beqere, 2/235.
569. Şûra, 42/25.

Xortekî krîstîyan ê ku krîstîyanîya xwe jî vedişart yekem car hatibû di sohbeta Hezretê Ebdûlxaliq Gucdevanî yê ku yek ji ewlîyaullah bû de pişkdar bûbû. Wî xortî ji Hezretê Ebdûlxaliq Gucdevanî pirs kir, jê re got:

“- Gelo sirra vê hedîsê: «Ji fîraseta mûmînî bitirsin! Lewra ew, bi nûra Xuda dinêre!» çi ye?”

Hezretê Ebdûlxaliq Gucdevanî di bersiva wî de wiha got:

“-Zinnarê ji newqa xwe derîne! (Wê nîşana kufrê ku krîstîyan li pişta xwe girêdidin, veke!) û misliman bibe!..”

Ew xort li hemberî vê fîraseta eşkere, li ber Hezretê Pîr kelîma şehadetê anî; misliman bû.

Dîsa tê rîwayetkirin ku Cuneydê Beğdadî -quddîse sirruh- jî di awira pêşî de bi fîraseta xwe tesbît kir ku wa ye xortekî di qîyafetê mislimanî de li wir e, ew cihû ye û ewê di demeke nêzîk de bi îslamê şerefdar bibe.

Xulase fîraset, mewhîbeyteke îlahî ye ku dikare li gorî îmana di qelb de û dereceya teqwayê kêm û zêde bibe.

**Îstîqamet û ğeyret, ji keşf û kerametên bêjimar çêtir in. Ji bilî vê jî divê were zanîn ku keşf û keramet, heke ji bo zêdekirina rîayeta fermanên dînî nabe wesîle, ji bela û fitneyê pê ve ne tiştekî din e."** [570]

## 3. TESERRUF - KERAMET

Cenabê Heq, Qadirê Mûtleq e, dema ew bûna tiştekî bixwaze, jê re sade "**Kun**" yanî "**bibe**" dibêje, û ew kar bicih tê. Digel vê jî Xudê Teala bi mûqtezaya mirada îlahî ya xwe teserrufatîya hinek bûyeran ji bo hinek bendeyên xwe tewdî kiriye, bi wan sipartiye. Ew teserrufatî di heqîqeta xwe de, Rebbê me, dîsa heta bi sifetê "Aferîner" ê xwe di wî karî de daxil nebe, tevlî nebe ew bi cih nayê jî lêbelê dîsa Cenabê Heq di teserrufatîyên wiha de her yek ji van bendeyên xwe bi wasîte kiriye. Wekî ku di her çar melaîketên mezin de jî rewş ev e.

Mesela ji van melaîketan Cebraîl -eleyhisselam- bi anîn û dan zanîna wehyê ji pêğemberan re; Mîkaîl -eleyhisselam- bi sewq û îdarekirina bûyerên tebîatê re; Ezraîl -eleyhisselam- bi qebd û standina rûh û canan re; Îsrafîl -eleyhisselam- bi pifkirina di Sûrê de hatine peywirdarkirin.

Helbet Cenabê Heq dikarîbû bê wezîfedarkirina wan melaîketan bi van peywiran jî rasterast wan bicih bîne. Lêbelê Ellah Teala, bi îradeya îlahî ya xwe wezîfe û selahîyeteke wiha daye wan. Di esasê de hêz û qudreta wan ji qudreta Cenabê Heq e. Ellah Teala ye, yê ku ew hêz û qudret daye wan. Hemû hêz û selahîyeta hemû mexlûqatan jî wekî vê ye.

Ellah Teala selahîyeta hinek teserrufatîyan daye pêğemberan jî. Ji navbera van jî zanîna Suleyman -eleyhisselam- ya zimanên heywanan û hukmkirina wî ya li ser bayan û cinan meşhûr e.

570. Mewlana Xalid-ê Beğdadî

Gellek selahîyetên mûstesna ji bo îmamê pêğemberan Mezinê me Fexrê Cîhanê -sellellahû eleyhî we sellem- jî hatine lutfkirin. Hinek ji bijardîyên ummeta wî jî bi qeder dana Cenabê Heq ji wan lutfan hissedar bûne. Mesela dem bi dem tê neqilkirin ku van welîyên mezin ên wekî Ebdûlqadir-ê Geylanî û Ahmed er-Rîfaî gerek di jîyana xwe de gerek di piştî wefata xwe de, hinek teserrufatî kirine.

Teserruf, di ferdekî ji ferdan de sade ne bi îradeya wî tê meydanê lêbelê wekî ku di temamê weqaetan de wisa ye, Ellah Teala bi sifetê “Xaliq” ê xwe wê dide tecellîkirin û di wê kirinê de daxil dibe, tevlî dibe. Yanî teserruf, ti ferqa wê ji bûneke din ji bûnan nîn e, lê ferq di bûna îstisnaî ya vê de ye. Yanî ji her bendeyî re mûyesser nebûna wê ye.

❁

Keramet jî ku cureyeke teserrufatîyê ye; ew bûyerên xarîqulade yên ji fîzîkê biwêdetir in ku wek îkrameke Cenabê Heq di encama îmaneke kamil, marîfet û teqwayê de di bendeyên welî de xuya dibin û ew nikarin bi qanûnên tebîatê werin îzahkirin. Ev, beşa sûrî ya kerametê pêktîne. Di nêrîna ehlûllah de esil keramet jî jîyîna li ser îstîqametê ye. Dostên heq bi vê selahîyeta manewî ya ku pê gihane, bi dîtin, fikirîn û heta bizvên xwe ji însanên dîger ferqdar in, cuda e.

Wekî ku ji tarîfa wê jî tê fehmkirin, ew kerametên ku ji welîyan xuya dibin, du beş in:

**1. Kerameta Manewî** ye: Kerameta manewî ev e ku însanî karîbe ji îlm, exlaq, îbadet, marîfet û teqwayê mesafe qut kiribe, ji hêla maneyî ve sewîye girtibe û di naveroka ayeta; « فَاسْتَقِمْ كَمَا أُمِرْتَ »“**wekî ku ferman li te hatiye kirin wisan li ser îstîqametê bibe!**”[571] de para xwe wergirtibe. Yanî keramet îstîqamet e. Mesela ew peyvên ku ji devê welîyekî li ser îstîqametê ye, dertên, digel ku hikmet û îrşad in jî, ew peyv bi uslûbeke wisan tên ku dilê ti kesî ji mûxateban bi wan namîne, naêşe. Welew ku ew peyv, xetaya mirovê li hemberê îşaret bikin û ew di mahîyeta îqazê de bin jî.

Bi aqil û tefekkurê bidestxistina van kerematan ne mûmkin e. Ellah Teala ji navbera bendeyên xwe kî bijardibe ji bo van kerametan bide wan, van keremetan ji wan re îhsan dike.

571. Hûd, 11/112.

**2. Kerameta kewnî û sûrî** ye: Ew xarîquladeyên zahirî ne, ku di alema maddî de têne meydanê. Her wekî tewandina mekanî, anîna ber çavan ya wan tiştên ku ne li holê ne û kar dana dîtina bi heywanên wehşî û yên wekî van e.

Erbabên rasteqîneyên tesewwufê zêde îtîbarê nadin van cure kerametan. Ji xwe îzhara kerameteke wiha jî ne ji şertên welî-bûnê ye. Ellah Teala, van cure teserrufatîyan ji hinek bendeyên xwe re lutf dike ku wî ew bijardine. Lêbelê hatiye îfadekirin ku bê zerûret îzharkirina van cure kerametan jî ne tişteke xweş e. Ji xwe welîyek jî heta mûmkin bibe naxwaze van cure kerametan îzhar bike. Lewra heyranîya gel û çepikên wan ji van cure kerametan re tên. Vêca kesên cahil jî êdî wê destpê bikin her tiştî ji wî welîyî çavnêrî bikin.

Heke çi qeder xelk, ji navbera van cure kerametan ji cureyê duduyan re arzû û reğbetê şanî bide jî lêbelê di esilê xwe de cureyê meqbûl ya pêşî ye. Lewra ehlê tesewwufê îttîfaq kirine ku "mezintirîn keramet, îstîqamet e." Naxwe ferfitîna salikekî ne li ser îstîqametê be jî, beyhûde ye.

Hezretê Mewlana Xalid-ê Beğdadî dibêje:

"Îstîqamet û ğeyret, ji keşf û kerametên bêjimar çêtir in. Ji bilî vê jî divê were zanîn ku keşf û keramet, heke ji bo zêdekirina rîayeta fermanên dînî nabe wesîle, ji bela û fitneyê pê ve ne tiştekî din e." [572]

Emanceke bala'ya kerametan heye. Ev jî, heke tabîr caiz be "bi tesîra şokê" dana berê mûxteban li ser îstîqametê ye. Lêbelê dîn, ji teklîfa (binbarîyên) îlahî îbaret e. Ewê bi vê wesfa xwe heta bi qiyametê jî her dewam bike. Herçî fewqelade ne, zirarê digihînin wesfa teklîfa (binbarîya) dînî. Bi vê sedemê, heta mecbûr nemînin pêğember serî li mûcîzeyan nadin, heta welî jî mecbûr nemînin serî li kerametan nadin û wan îzhar nakin.

Kerameteke rasteqîne bi giştî ev encamên wê dibin:

**1)** Dan edebkirina nefsê ye,

**2)** Dan paqijkirina qelb ji xuy û temayulên mekroh e û tezyînkirina wî bi feyza îlahî ye,

**3)** Dan eyankirina sirran û hikmetan ji bo qelb e.

572. Mewlana Xalid-ê Beğdadî

Li alîyê din, ji bo bi zihûrê hatina kerametan jî yek ji wasîteyên giringtirîn jî **îsmê ezam** e ku Cenabê Heq ew wek sirr ji bendeyê xwe re daye zanîn. Îsmê ezam ku di babeta mewhîbeyên îlahî de wî cihekî giring heye. Em dixwazim bi kurtî behsa îsmê ezam jî bikin.

Îsmê ezam, yek ji wan navên îlahî ye ku ew dûaya bi wî navî were kirin, wê bi mûstecab dike. Lêbelê nuqteya ka ev kîjan navê Cenabê Heq e, ew sirr e û di vê babetê de gellek rîwayet hene. Ji navbera van rîwayetan tevan jî ev dîtin-nêrîna ku dibêje; îsmê ezam lefzê "Ellah" e, ku navê zatê Xudê Teala ye û wî hemû navên wî di xwe de civandine, ya xurt û biqewwet e.

Yek ji teleqqîyên di vê babetê de jî wiha ye:

Ji ber ku Cenabê Heq ji qudreta xwe wek nefxa (pifkirina) îlahî nesîb û parek ji însanî re lutf kiriye, tecellîya berferehtirîna navê îlahî di "însan"î de bicih hatiye. Însanê kamil, ew kes e ku karîbe ev navê îlahî yê ku bi xurtî di fitreta wî de mewcûd e, ji quweyê derbixe fiêlê û gihabe bextiyarîya exlaqê xwe kirina bi exlaqê Xuda ye. Ji lewma tê gotin; di bendeyekî de tecellîya kîjan navê îlahî di halê ğelebê de be, ji bo wî kesî îsmê ezam ew nav e. Yanî bendeyekî ku têde hestên merhemet û şefqetê înkîşaf bûbin, di wî de tecellîya navê Rebbê me "Rahman" û "Rahîm" serwer in, hakim in. Naxwe ji bo kesekî wiha ev nav, îsmê ezam hatine jimartin. Lêbelê esil marîfet, ev e ku mirov karibe jîyîna bi mûqtezaya navên sipehî yên Cenabê Heq ji bo xwe bi exlaq kiribe, bike. Heke na, gellek mirov hene îsmê ezam di kitêban de yan jî jiber dixwînin û diçin. Naxwe ziman, dema dibêje; "ya Rahman, ya Rahîm!.." heke para qelbê wî di merhemetê de nebe, çavnêrîkirina hasilbûna wî tiştê ku tê arzûkirin, hêvîyeke beyhûde ye.

Ev bûyera ku di vê babetê de di navbera Hezretê 'Elî -radîyellahû anhû- û bedewîyekî de çêbûye, pirr îbretdar e:

Rojekê bedewîyekî xizan ji Hezretê 'Elî sedeqe dixwaze. Hezretê 'Elî -radîyellahû anhû- di wê an û gavê de ji ber ku wî derfeteke din nebû, ji erdê radije çengek sêlih/qûm û hinek tiştan li serê dixwîne û di wê sêlihê de pif dike. Piştre jî van wek zêr dixe çenga wî bedewîyî. Ew bedewî di nav heyretê de dimîne. Ew lavlavê ji Hezretê 'Elî dike, ka ji min re bibêje, ev çawa bûye û te li ser sêliha di çenga xwe de çi xwend. Hezretê 'Elî -radîyellahû anhû- jî bi awayekî ğayet aram û sakin jê re dibêje; "min Sûretê Fatîhê" li ser wê sêlihê xwend. Vêca wî bi keyfxweşî rahişte çengek sêlih ji erdê, sûretê Fatîhayê li serê xwend û di sêlihê de pif kir. Lêbelê sêlih aynî sêlih bû, nebû zêr. Wî

bedewî hikmeta vê ji Hezretê ‘Elî -radîyellahû anhû- pirs kir. Hezretê ‘Elî cewhera kar jê re wiha xulase kir, jê re got:

“-Ev, ferqeke qelb e.”

Hezretê Mewlana jî di *Mesnewî*’ya xwe de qisseyekê wiha diguhêze, neqil dike:

Rojekê kesek bi Hezretê Îsa -eleyhisselam- re dibe hevalê rê. Dema ew pevre birêve diçin vî kesî, li goşeyekê hinek hestî dîtin û lavlav ji Hezretê Îsa -eleyhisselam- kir:

“-Ji kerema xwe, ya Îsa! Îsmê Ezam ê ku tu dizanî li min hîn bike da ku ez van hestîyan vejînim û wan rakim.”

Hezretê Îsa -eleyhisselam- jî di bersiva wî de jê re got:

“-Ew îş ne karê te ye. Ji bo mirov Îsmê Ezam bixwîne û mirîyan vejîne divê mirov bibe kesekî wisan xwedî nefesekê ku ew ji baranan paqijtir be, di evdînîyê de ji melaîketan têgihiştîtir be. Îsmê Ezam, zimanekî pak û qelbekî paqij dixwaze. Wate divê ew bibe kesekî wisan ku nefsa wî bi heramê mûlewwes (lewitî) nebe û wekî melaîketan ji îsyan û gunehan pak be. Lewra ew kesê ku nefsa wî pak bibe; dûaya wî kesî meqbûl dibe. Heq Teala wî kesî bi pêbawerê xezîneyên xwe dike. Mesela em ferz bikin ku tu dikarî kopalê Hezretê Mûsa di destê xwe de bigrî. Lêbelê ma ew qewweta ku di Mûsa de hebû di te de heye? Heta ku tu karibî wî bikî ejderha û tu karibî wî zevt bikî. Heta dema kopalê Mûsa bûbû ejderha ew bi xwe jî jê tirsîyabû, vêca Cenabê Heq jê re gotibû: “**Netirse, ya Mûsa!**”[573]

Ha wekî vê, dema nefesa Îsa di te de nîn e, vêca ku tu îsmê Ezam bixwînî û jiber bikî wê çi feyda wî ji te re çêbibe.”

Lêbelê ew ğafil dîsa nesekinî û jê re got:

“-Ya Îsa! Heke ev îstîdad di min de nîn e, naxwe tu li ser wan hestîyan bixwîne!”

Îsa -eleyhisselam- zêde zêde ji peyvên vî ehmeqî teeccub kir û jê re got:

“-Ya Rebbî! Hikmeta van sirran çi ye? Çima meyla vî ehmeqî ev qeder li ser cîdalê ye? Qelbê wî bi xwe mirî ye, lê ew hewl dide cesedê dîgeran

573. Neml, 27/10.

vejîne. Haleveku tişta dikeve ser wî, bila ew xwe mirîyê esilî îhya bike. Ji dêvla ku ew ji bo vejandina xwe dûa bike, ew hewl dide dîgeran îhya bike. Ev çi ğeflet e!"

Ha dostên Heq ên rasteqîne, ew kes in ku di dilên xwe de gihane vê kemalê. Li ser vî esasî, dema kerametek ji evdekî welî yê Xuda îzhar û xuya dibe, hesta wan ya şukirkirina ji bo lutf û îkramên Xuda hê bêhtir zêde dibin. Ev halên wan, ji bo wan di mûcahedeyên ku dikin de dibin serkehnîya feyzê. Welîyên heqîqî xwe bi ber vê hissê ve bernadin ku bi sebeb kerametên wan axreta wan di bin temînatê de ye. Bi berevajî vê, ew bi hestên bêçaretî, tewazû û xwe biçûçik dîtina li hemberê Xuda, tije dibin. Ji ber ku ew ji endîşeya ketina ğurûr, kibr û fitnê ne salim û parastî ne, ew tim di nav tirs û sawê de ne.

Çawa Bel'am bin Baûra ku Îsmê Ezam ê Ellah -celle celaluhû- dizanîbû, serencama hezîna ku ketibûyê jî pirr îbretdar e. Ev kes, di navbera zaroyên Îsraîl de wek mirovekî alim û welî dihate zanîn. Lêbelê paşê di encama kibr û xapîna bi dinyayê de, wî ew halê bilind ê xwe jidestda, heta ew wek bêîman jî mir. Ev bûyer, di Qur'ana Pîroz de wiha hatiye teblîğkirin û ragihandin:

"**Nûçeya wî yê ku me ayetên xwe dabûnê, ji wan (cihûyan) re bixwîne; paşê ew ji wan derket, paşê şeytan bi dor wî ket, paşê jî ew bû ji rêşaşan. Heke me xwestibaya, me bi ayetên xwe mertebeya wî bilind dikir, lêbelê ew ma bi dinyayê ve û li pey hewesa xwe çû. Meseleya wî wekî meseleya seg e; heke tu bi ser de biçî, ewê zimanê xwe derîne û bike helkehelk, heke tu bi ser de neçî, dîsa ewê zimanê xwe derîne û bike helkehelk! Ha ev e, rewşa wê civaka ku ayetên me diderewînin. Vê qisseyê bibêje, da ku ew tefekkur bikin**." [574]

Îltîfata zehf zêde ji bo welîyekî xwedî keramet, bi vê sedemê ew heta tu bibêjî bes mehzûrdar û xeterdar hatiye dîtin. Yek ji sedemên ku dostên Heq xwe ji teşhîrkirina kerametan îctînab kirine jî ev tehlûke ye. Keramet ne mertebeyeke nîhaî ye û ew dereceya welî jî şanî nade. Naxwe dostên Heq ğayet baş dizanin ku ji bilî pêğemberan ti kesî din ne di bin temînatê de ye. Hinek însan hene, bostek dimîne ew biçin êgir, li cennetê vedigerin. Hinek însan jî hene, bostek dimîne ew biçin cennetê, di cehennemê de têne werkirin. Naxwe divê her mûmîn vê ayeta pîroz:

574. E 'raf, 7/175-176.

“.. **Heta yeqîn** (mirin) **were te, ji Rebbê xwe re evdînîyê bike!**”[575] ji bo xwe bi destûra jîyanê bike.

Wekî ku di her babetê de wisa ye, li hemberî van lutfên îlahî yên ku di şeklê kerametan de xuya dibin jî dîsa tekane pîvana me Qur’an û sunnet e. Digel vê jî keramet weqaeteke heq û heqîqet e ku nayê înkarkirin.

Çawa ku di **Qur’ana Pîroz** de çend ji **delîlên** kerametê wiha ne:

Asaf ê wezîrê Suleyman -eleyhisselam- di bara textê şaha Sebe’yê Belqîsê de gotiye: “.. **Berî tu çavê xwe miç bikî û vekî ezê wê ji te re bînim.**.”[576] û ev soza wî bicih jî hatiye.

Zekerîya -eleyhisselam- bi lê meyzandin û xwedîkirina Meryemê hatibû bi mûkellefkirin ku wê xwe xistibû mabedê û bi îbadetê ve meşğûl bû. Lêbelê her dema ew diçû mabedê, li cem Hezreta Meryemê fêkîyên curecur didîtin. Wî ji bo hînbûna hikmeta van ji Hezreta Meryemê pirs kir, jê re got:

“**-Ev rizq, ji kuderê ji te re tên**?” Hezreta Meryemê ev bersiv dayê, jê re got:

“**Ew ji cem Xuda ne**..”[577] Dîsa di sûretê Meryemê de di ayetên 24 û 25’an de xeber hene ku rasterast Xuda rizq ji Meryemê re dişand, ev hinek ji delîlên kerametê yên di Qur’anê de bûne.

Delîlên kerametê di sunnetê de pirr hene:

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Sê kes, hê di dergûşê de xeber dane. Ev:*

*Îsa kurê Meryemê ye, ew zarokê ku digotin qaşo kurê Cureyc e û zarokekî dîger e*.” Û ev îzah kirine.”[578]

Di hedîseke sehîha dîger de hatiye vegotin; sê kes çûbûne rêwengîyê, bi şev çûbûn ketibûne şikeftekê û ew di wê şikeftê de asê mabûn. Lewra kevirek ji zinarî gindir bûbû, hatibû ketibû devê şikeftê û derîyê wê li ber wan hatibû girtin. Vêca her rêwîyekî ji wan bi amelekî ku ji bo rizaya Xuda kiribû, tewes-

575. Hicr, 15/99.
576. Neml, 27/40.
577. Alî Îmran, 3/37.
578. Binêrin. Mûslim, Birr, 8.

sul kiribû, pê dûa kiribû û di encamê de bi îkrama îlahî ya ku bi zihûrê hatî, derîyê şikeftê (li ber wan) hatibû vekirin.[579]

Ji sehabîyan Enes -radîyellahû anhû- wiha vegotiye:

Useyd bin Hûdeyr û Ebbad bin Bişr, di şeveke tarî de li cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bûn. Dema ew ji cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- derketin, meyzandin hem jî çi meyzînin, dîtin ku wa ye du nûr li pêşîya wan hene. Dema ew ji hev û din veqetîyan, her yek ji wan nûran bi yekî ji wan re dewam kir.[580]

Dema Xubeyb -radîyellahû anhû- di destê mûşrikên Mekkehê de yexsîr bû hem jî di zemanekî ku têde hîç meyveyeke taze nebû de hatiye dîtin ku weşîyek tirh di dest wî de ye û ew jê dixwe. Ev ji bo kerametên ku sehabî jê re bi mezher bûne, nimûneyekê teşkîl dike.[581]

Dîsa li gorî rîwayetan; dema Ûmer -radîyellahû anhû- li ser minberê xutbe ji xelkê re dixwend, bang kir, got: “Ya Sarîye, bi çîyê ve bi çîyê ve!” Dema wî ev peyv digot ku hîç ti peywendîya wê bi mijara xutbê ve nebû, di wê esnayê de Sarîye, di mesafeya mehekê ji Medînê dûr de bi dijminên Xuda re ceng dikir. Lêbelê Ellah -celle celaluhû- dengê Ûmer -radîyellahû anhû- biribû guhê Sariye û pê dabû bihîstin.[582]

Mîsalên wekî van di dewra sehabîyan de pirr in.

Li alîyê din wek ziddê kerametê dibe ku hinek fewqeladeyên ku dişibihin kerametên welîyan ji hinek mirovên kafir, fasiq û mûteşeyyix, yanî digel ne welî-bûnîya xwe jî xwe welî şanî didin, sadir bibin, der bên. Ji bo xarîquladeyên ku ji îddîayên van re wek guncaw têne meydanê **îstidrac** hatiye gotin.

Halên wiha bi saya hinek temrînên gîyanî bicih tên. Yanî mûmkin e însanek, hinek şîyan û qabilîyetên di gîyan û rûh de bi hinek tesîrên der-dîn ji quwweyê bi fiêlê derîne. Mesela feqîrên Hindistanî jî bi pirranî bi rêya rîyazatê digihîjin hêzeke gîyanî. Carina jî ev, bi awayê bikaranîna sêhrê, yan

579. Binêrin. Buxarî, Edeb, 5; Enbîya, 53; Zikr, 100.
580. Buxarî, Selat, 79, Mesacid 78, Menaqib 28, Menaqîbu’l-Ensar 13.
581. Buxarî, Cîhad, 170, Meğazî 10, 28.
582. Îbn-î Hecer, el-Îsabe, II, 3.

jî bikaranîna “xuddam”[583]ên ji cinnîyan waqîî bibe. Naxwe fehmkirina ferqa fewqeladeyên wekî van ji kerametê jî karê îlmê ye. Lêbelê bila em vê qederê bibêjin; heyata mirovên wiha di nav pîvanên teqwayê de cereyan nake. Ev cure mirov, ji îttîbaa (peyrewbûnîya) sunneta Resûlûllah naqis û kêm in. Ha nuqteya pêşî ya ku mirov lê diqqet bike jî, ev e.

Çawa Cuneydê Beğdadî -quddîse sirruh- dibêje:

“Heke hûn kesekî bibînin ku ew li hewayê difire jî lê halê wî bi Kîtab û Sunnetê re ahengdar nabe, ev îstidrac e.”

Ji xwe ew kesê ku ji bo îkrameke îlahî wek mezher kîjan fewqelade têde were meydanê jî ew vê bi edaya rîyakarîyê nake. Lewra dostên Heq ên rasteqîne, ji ber ku ji rîyakarîyê bêrî ne, heta pirr mecbûr nemînin ji xwe van îzhar nakin. Ew bi mûkemmelîyeta exlaqî ya xwe ku însan karibin wan ji bo xwe bi nimûne bigrin, têne dîtin. Çawa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî da ku ji ummeta xwe re bibe nimûneyeke mûkemmel bi giştî bi mûqtezaya temayulên beşerî hereket kiriye û di halê îhtiyacê de jî bi destûra Xuda nadîren ( pirr hindik) mûcîze şanî dane. Dostên Xuda jî bi qeder mûyekî jî ji rêya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- cuda nabin. Ji bo ji hev û din fehmkirina keramet û îstidracê, sade li vê mijarê tenê jî diqqet kirin bes e, kafî ye.

Firewn jî yek ji xwedîyên îstidracê bû. Wî di dirêjîya temenê xwe yê çarsed salî de hest bi serêşîyê jî nekiriye. Diranên wî jî yekpare bûne. Dema ew ji efrazê ber bi sernişûvê ve peya dibû, pêşelingên hespê wî dirêj dibûne.

Îstidrac, ğurûr û kibrê dide mirovê kafir û mirovê fasiq. Encama wan hê berbattir dike. Dema Mûsa -eleyhisselam- kopalê xwe li Deryaya Sor da û bi destûra Xuda ew jê re bû rê û rêbiwar, hingê Firewn bidûv wan diket, ew li serbazên xwe vegerîya û ji wan re got:

“-Binêrin! Ji ber celadeta min derya ji min re bû rê.” Haleveku dema ew kete wê rê, dîsa ew rê bi deryayê wergerîya û wekî berê bû behr. Firewn jî digel serbazên xwe çûne helakê.

583. Mûmkin e însanek bi hinek xwendinan cinnîyekî bixe bin îtaetê û wî wek ğulam û xizmetkar bikarbîne. Ji bo cinnîyên wiha “Xuddam” tê gotin. Xuddam, bi qeder îstîdada xwe her fermana însanê ku ew ji xwe re bi bend kiriye, tîne cih.

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsên şerîf ên xwe de daye zanîn ku Deccal jî wê gellek îstidracan şanî bide û ewê her hewl bide mirovan jirêbixe.

Hinek hal hene bi berevajî îddîaya xwedîyê îstidracê xuya dibin ku navê "îhane" (reben kirin, zelîl kirin) li van tê kirin. Mesela Mûseylemetu'l-Kezzab ku derewînek e, ji bo xwe îddîaya pêğembertîyê kiriye, di bîrê de tif kiriye ji bo ava têde jê vala bibe, lêbelê ava wê bi temamî ziwa bûye, çikihaye.

Di serdemên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û eshabê kîram de bicih-hatina teserrufatî û kerametan çawa mûmkin bûbe, di serdemên dûv wan de jî bi meydanê hatina wan wisan mûmkin e. Welî, bi meqsûda beralî şanîdana ji bo îradeya hinek mirovan teserrufatî û kerametan îzhar dikin, bi bereketa pêğemberê ku peyrewên wî ne, û di heman demê de ew teserrufatî û kerametên wan di mahîyeta cure dewamîya mûcîzeyên wî de ne..

Teserrufatî û kerametên ku hem di esrê seadetê de, hem jî di zemanên paştir de hatine meydanê rastîyeke tarîxî ye ku ew ji bo gellek hîdayetan bûne wesîle. Çawa gellek mirovên ku ji bo bûyerên wiha bûne şahid, ji xwe re gotine; "dînekî ku welîyê wî wiha be, kî dizane ka pêğemberê wî çawa dibe!.." merkeza esilî ya kerametê te'yîd kirine.

### Hinek Nimûneyên Taybetî Di Bara Teserrufatî û Kerametan De:

Ellah Teala Xaliq û Malikê kaînatê ye, wî însan kiriye eşrefê mexlûqatan û ew ji bo xwe wek xelîfe tayîn kiriye. Ji bo ew hebûna Xudayê xwe nas bike, bizane, jê re îbadet û îtaetê bike û sererdê tamîr û avasaz bike. Xudê Teala vê rastîyê di ayeta pîroz de wiha eşkere dike, dibêje:

وَإِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلائِكَةِ إِنِّي جَاعِلٌ فِي الأَرْضِ خَلِيفَةً

"**Di bîra xwe bîne ku Rebbê te ji melaîketan re gotiye**: «**-Ezê li sererdê xelîfeyekî biaferînim**.»"[584]

Li vir bi "xelîfe" kirina însanî bi van maneyan tê:

"Ezê ji îradeya xwe, ji qudret û sifetê xwe hinek selahîyetan bidime wî; ewê bi îzafe li ser min, bi wekaleta min li ser mexlûqatê min bibe xwediyê

584. Beqere, 2/30.

hinek teserrufatîyan; ewê li ser navê min ehkama îcra bike; ewê di vê babetê de nebe esil; ewê li ser navê zatê xwe û şexsê xwe bi esaletî ehkama îcra neke, lêbelê ewê ji bo min bibe cihgir û wekîl.. Ewê bi îradeya xwe ji bo tetbîqkirina îradeyên min, fermanên min û qanûnên min bibe fermanber. Paşê wê gellek însan peyda bibin ku ji bo yên di piştî wî de bên û dê ji wî re wek xelîfe heman wezîfeyê îcra bikin û wê bi vî awayî sirra «**Wî**, (Xudayê mezin) **hûn li sererdê bi xelîfe kirin**.»[585] zahir bibe."[586]

Gerek ew teserrufatî û mûcîzeyên ku ji pêğemberan zahir bûne, gerek jî ew teserrufatî û kerametên ku ji dostên Heq hatine dîtin, tecellîyeke sirra vê xelîfe bûnîya însanî ne. Ji van tecellîyên bêjimar çend nimûne wiha ne:

Mensûr bin Ebdûllah, halê Ebû Ebdûllah Îbn-î Cella wiha rîwayet kiriye:

Îbn-î Cella dibêje:

"Ez hatibûme Medîna Mûnewwer. Ez jar û belengaz bûm. Ez gihame qebra Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem-. Min silav dayê û got:

«Ya Resûlê Xuda! Ez di nav feqr û zerûretê de me!.. Ez bûme mêhvanê te..»

Piştî mûddetekê halê pûnijînê bi ser min de hat. Di xewê de Mezinê me Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- çorekek ji min re îkram kir. Min nîvekî wê xwar, piştre ez şîyar bûm; min ew nîvê dîgerê wê jî li cem xwe dît."[587]

Bûyereke dîgera bihikmeta ku di piştî wefata Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- de hatiye jîyîn jî el-Utbî wê wiha vedibêje:

"Ez li cem qebra şerîfa Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- rûniştibûm. Ji nişka ve bedewîyek hat û got:

«-Silav li te be ya Resûlê Xuda! Min bihîst ku Xudê Teala dibêje; "**heke dema wan li xwe zulim dikir bihatana cem te, ji Xuda meğfîret bixwestana û Pêğember jî ji bo wan meğfîret bixwestaya, wan Xuda** (ji bo xwe) **zehf efûkar û zehf dilovan didît**."[588] Ha va ye, min ji gunehên xwe tobe kir

585. Enam, 6/165.
586. Elmalili, Heq Dînî, I, 299-300.
587. Binêrin. Kelebazî, Tearruf, werg. S. Uludağ, rûp. 214.
588. Nîsa, 4/64.

û ez meğfîretê dixwazim û ez hatime cem Te ji bo tu ji Rebbê min ji min re şefaetê bikî.»

Piştre şiêreke bi kul xwend û ji wir cuda bû, çû. Di wê esnayê de xewek li ser min ğalib bû. Min di xewna xwe de Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dît. Wî ji min re got:

«-Ey Utbe! Bigihe wî yê bedewî û mizgînîyê bidiyê ku Xuda ew efû kiriye!»”[589]

❀

Di hengama zehf dijwarbûna mûhareba Çanakkale’yê de serhezar (binbaşi) Lutfî Beg digot:

“Hewar ya Mûhemmed hewar! Kitêba te ji destan diçe!.”[590] û feryad dikir, hewar ji Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dixwest. Awayê xuyabûna vê arîkarîya ku bi îxlas û semîmîyet ji Pêğemberê Xuda hatibû daxwazkirin, di vê bûyera li jêrê de bi awayekî net wê te’yîd dike:

Sal, 1928.. Di ser serkeftina Çanakkaleyê de tam 13 sêzdeh sal derbas bûne.

Însanê alim, arif û zarîf Cemal Oğut Xocaefendî yê Alasonya’yî diçe hecê. Xocaefenfî li Medînê firsendê dibîne ku ew û gellek zatên giranbiha hev û din nas bikin. Ha yek ji van zatên mûbarek jî turbedarê Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Ev dostê Heq, di heman demê de dostekî dilsozê Osmanîyan e. Ew her dibêje “Osmanîyan” û tiştekî din nabêje. Cemal Oğut Xocaefendî hew xwe digre û vê pirsê jê dike:

“-Tu çima ev qeder ji wan hez dikî?”

Ev pîrê fanî yê bûye turbedarê nûranî, bê rawestan her vê bersivê dide, dibêje:

“-Ji bo ez li ser navê Îslamê ji Osmanîyan hez bikim, bîranîneke min ya tenê jî têrê dike.”

Li ser israrkirina Xocaefendî, ew bîranîna bêhemtaya xwe wiha vedibêje:

589. Îbn-î Kesîr, Tefsîr, I, 532.
590. Binêrin. Mehmed Nîyazî, Çanakkale Mahşerî, rûp. 352-355.

“-Di heca 1915’an de zatek ji alimên Hindistanê jî hatibû. Ev zat dostekî Xuda yê dinyaya derûnîya xwe zengîn bûye. Piştî hecê jî ew ji bo serdana pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hatibû Medînê. Ew pirr ğemgîn dixuya. Ev zatê mûbarek ê ku hîç hêstirên çavên wî nedisekinîn, dema min sedemê ğemgînîya wî jê pirsîn, hê bêhtir hêstir ji çavên wî barîn û ev bersiv da min, ji min re:

«Piştî ev qeder sal ji bo min bû nesîb, ez hatim serdana Efendîyê Aleman. Lêbelê min bi çavê xwe dît ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ne li meqamê xwe ye. Yan jî çavên dilê min kwîr bûne?.. Gelo ez çima hest bi hebûna pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nakim? Ha ji dema ez hatime Medînê ve ez bi van hizran perîşan im!»

Turbedarê yextiyar, wê şevê di xewna xwe de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibîne. Wan tiştên ku alimê Hindistanî vegotibûn, jê re vedibêje. Resûlê Xuda, wî di nav meraqê de nahêle û jê re wiha dibêje:

“-Erê, tişta ku wî hestpê kirî rast e. Ez vêga ne li Medîna xwe me. Ez li Çanakkalê me… Dilê min razî nebû ku ez ewladên xwe serbazên di zorê de bi tenê bihêlim. Ez vêga arîkarîya wan dikim.”[591]

Çawa îtîrafa generalê Îngilîzî Hamilton li ser binketina Çanakkalê ku wiha gotiye:

“Ne hêza maddî ya Tirkan, lêbelê hêza manewî ya wan em meğlûb kirine. Lewra heta barûta wan jî nemabû ku bavêjine me. Lêbelê me hêzên ku ji asîmanî peya dibûn bi çavê xwe dîtin.” adeta ji bo îfadeyên li jorê wekî şahidekî ye.

Ev cure bûyer, teserrufatîyeke Cenabê Heq di piştî wefata wan de jî daye pêğemberên xwe. Ew di qebrên xwe de bi awayekî ku em bi îtîbayên dinyayî yên xwe mahîyeta wê fehm nakin, sağ in. Çawa ev hedîsa şerîfa li jêrê jî vê rastîyê bi awayekî eşkere li holê datîne.

Li gorî ji Ews bin Ews -radîyellahû anh- hatiye rîwayetkirin, dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Bi fezîlettirîn rojên we roja înê ye. Bi vê sedemê di wê rojê de zehf selat û selaman li ser min bidin; lewra selat û selamên we ji min re têne erzkirin*.” Eshabê kîram jê pirs kirin, jê re gotin:

591. Ji Rojnameya Zamanê ya di tarîxa 18ê adara 2001ê de hatiye wergirtin.

"-Ya Resûlellah! Dema tu wefat bikî û hîç ti eserek ji te nemîne, selat û selamên me çawa ji te re têne erzkirin?"

Li ser vê pirsa wan Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wan re wiha got:

"-*Xudê Teala, rizandina bedena pêğemberên xwe ji erdê re bi heram kiriye*."[592]

Ev halê sağîyê di şehîdan de jî tecellî dike. Çawa Cenabê Heq di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"**Zinhar mirovên ku di rêya Xuda de hatine kuştin** (şehîdan) **mirî zen nekin. Bi berevajî vê ew sağ in; bi tiştên ku Xuda ji lutf û kerema xwe dane wan di rewşeke keyfxweş de li cem Rebbê xwe ji bo rizqan dibine mezher**.."[593]

Bêşiwar sağîya di pêğemberan de bi qiyaskirina wê li sağîya di şehîdan de zehf çêtir û bilindtir e.

❁

Teserrufatî û tecellîyên di dostên Heq ên warisên Pêğember de jî heta bi roja me her dewam kirine û bi berdewamî hatine. Ji mîsalên bêjimar ên vê jî çend nimûne wiha ne:

Hezretê Ubeydûllah Ehrar, ji Asyaya Navîn mekanî li hev ditewîne û di fetha Îstanbûlê de pişkdar bûye. Kurê nevîyê wî Hace Mûhemmed Qasim wê bûyerê wiha diguhêze, neqil dike, dibêje:

"Hezretê Ubeydûllah Ehrar, roja pênşemê di piştî nîvroyê de ji nişka ve ferman kir, got; hespê min hazir bikin. (Hespê wî hate hazirkirin). Ew li hespê xwe siwar bû û derket derveya Semerqendê.

Şagirtekî wî ku bi navê Mewlana Şêx naskirî bû, mûddetekê wî taqîb dike. Wî xeber daye ku Hezretê Ubeydûllah Ehrar li ser hespê xwe piştî meyldana bi rexê rastê û meyldana bi rexê çepê ve (ji ber çavê min) winda bû. Hezretê Ubeydûllah Ehrar, piştî mûddetekê vegerîya. Şagirtên wî bi kelecan hikmeta vê rêwengîya nagihanî (ji nişka ve) jê pirs kirin. Wî jî ji wan re got:

592. Ebûdawud, Selat, 201; Binêrin. Nesaî, Cuma, 5.
593. Alî Îmran, 3/169.

«Sultanê Tirkan Mehmed Xan, hewar ji min xwest, arîkarî xwest. Ez jî çûm, min arîkarîya wî kir. Bi destûra Xudê Teala serkeftin hate bi hêsankirin.»”

Dema Hace Ebdûlhadî yê navîyê pîr Ubeydûllah Ehrar ji Xorasanê hat Îstanbûl zîyaret kir, wê wiha vedibêje:

“Dema ez çûme Îstanbûlê Sultan Bayezîdê II. şekl û şemalê bavê min Ubeydûllah Ehrar tarîf kir û wiha got:

«-Bavê min Fatih ji min re vegot: Di dijwartirîn zemanê fetihê de min penah bire ber Rebbê xwe, min xwest qutbê zemanî bi hewara min ve bigihe.. Di van û van wesfan de li ser hespekî sipî hate pêşberî min û ji min re got:

“-Netirse, serkeftin ji te re ye!..”

Min ji wî pîrî re got:

“-Eskerê kuffar zehf zêde ne!..”

Wî jî cubbeyê xwe ji min re vekir û got:

“-Li nava wî binêre!”

Min di zendika cubbeyê wî de artêşek dît ku wekî lehîyê diherikî. Wî ji min re got:

“-Ev artêş ji bo arîkarîya te hatiye..

Wî berdewam kir û got:

“-Vêga li ser vî girî sê caran doqikê xwe li daholê bide! Û ji hemû leşkeran re fermana êrîş bikin, bide!”

Min jî aynî wisan kir. Ew pîr jî bi artêşa xwe re di êrîşkirinê de pişkar bû. Fetha mûbîn bicih hat..”[594]

Welhasil weqaeteke tarîxî ye ku Fatih di esnaya fetihê de ji rûhanîyet û arîkarîya hemû welîyan îstîfade kiriye.

Bi taybetî di qadên maddî û manewî de gellek arîkarîyên Hezretê Aqşemseddîn çêbûne.

❁

594. Binêrin. Mewlana Şêx, Menaqib-ê Hace Ubeydûllah-ê Ehrar, r. 4b-5a; Mecdî Me - med, Hedaîqu’ş-Şeqaîq, rûp. 272-273; Molla Camî, Nefehatu’l-Uns, rûp. 764-765.

Bûyereke ku hatiye jîyîn bi "teserrufatî"yê re elaqedar ya Ezîz Mehmûd Hûdayî jî wiha ye:[595]

Sal 1975 e. Di wextekî ji nimêja nîvroyê nêzîk de xortekî rû-nûranî, çerm-genimî, bejin kutilkî hatibû ber Turbeya Hezretê Pîr. Di wê gavê de ew bi tesadufî li pêşnimêjê/îmamê Mizgefta Ezîz Mehmûd Hûdayî rast hatibû, jê pirs kiribû, jê re gotibû:

"-Seydayê min! Ez hatime ji bo Ezîz Mehmûd Hûdayî bibînim! Ez dikarim çawa pê re hevdîtinê bikim? Gelo ew vêga li vir e?"

Îmam Mûherrem Efendî li hemberî pirseke wiha şewwişî û jê re got:

"-Kurê min! Belê, Ezîz Mehmûd Hûdayî li vir e!"

Dema wî xortî bihîst ku Hezretê Pîr li wir e, bi keyfxweşî jê re got:

"-Ji kerema xwe min bibe hevdîtina wî!"

Lêbelê Mûherrem Efendî ti maneyek ji vê re neda, ji ber ku ew li cem Turbeyê bûn, dubare jê re got:

"-Kurê min! Ezîz Mehmûd Hûdayî li vir e!"

Wî xortî jî daxwaza xwe dubare kir û jê re got:

"-Naxwe min bibe hevdîtina wî! Ez dixwazim pê re hevdîtinê bikim!"

Mûherrem Efendî ji ber ku hê jî min tiştek ji halê wî xortî fehm nekiribû, ji bo ez karibim meseleyê çareser bikim, min jê pirs kir, jê re got:

"-Kurê min! Ma tu Ezîz Mehmûd Hûdayî nas dikî, tu wî dizanî?"

Ev dînamêrê ku wekî rûyê wî singa wî jî saf bû. Ew ji ev qeder dirêjbûna axaftinê bû, ew ma heyirî; gelo çima mûxatebê wî naxwaze wî bibe hevdîtina Ezîz Mehmûd Hûdayî, vêca wî bi sosret got:

"-Ez Ezîz Mehmûd Hûdayî ji nêzîk ve nas dikim. Wî ji bo hatina vir bang li min kir. Min û wî di mijara zîyaretê de soz dabû hev. Xebera wî jê hebû ku ezê werim."

Mûherrem Efendî ji vir fehm kir ku wecheyeke ferqdara meseleyê heye, nukteyeke sirrdara wê mewcûd e, û bi meraq jê pirs kir, jê re got:

595. Min ev bûyer, di salên xwendekarîya xwe ya Îmam-Xetîbê de ji hevalê xwe Mûherrem Qir Efendî bi xwe bihîst ku ew yek ji melayên Mizgefta Ezîz Mehmûd Hûdayî bû.

“-Kurê min! We çawa soz da hev?”

Wî xortî destpê kir û wiha vegot:

“-Seydayê min, ez di sala 1974’an de di bizava Qibrisê de ji wê koma komandoyan bûm ku bi paraşutê hatibûne peyakirin. Me di hengamekê de xwe bi paraşutan avêt ku artêşa me ji deryayê ve, artêşa Rûman jî ji çîyayê Beşparmakê ve li hemberî hev mûcadele dewam dikirin. Lêbelê ji ber ku hewa zehf bi ba bû, her yek ji me bi terefekî ve pekîn. Ez jî ketim nav xetên dijminan. Di devereke daristanî de ez ji du rexan ve di bin agirekî cehennemî de mam. Ez di halekî de bûm ku min nizanîbû ezê çi bikim, ez şaşomaşo bûbûm, bavekî yextiyarê bejin-dirêj, biheybet û rû-nûranî derket pêşberî min. Wî bi çehreyeke bevken, mûtebessim û şîrîn li min meyzand û ji min re got:

«-Kurê min! Ev dever xeta dijmin e. Çi karê te li vir heye? Tu çima bi tena serê xwe ketî vê xetê?»

Min jî jê re got:

«-Bavo! Ez nehatim, bayê ez xistim vir.»

Yextiyarê rû-nûranî piçekî serê xwe hejand û ji min re got:

«-Ez jî hatim herbê. Ez berî te hatim şandin. Ez van deveran baş dizanim. Kurê min, tu ji kîjan yekîneyê yî? Were, ez te bibim cem wan!»

Em pevre di bin topa agirekî dehşetdar de ketin ser rê. Ew însanê mûbarek, wekî ku di rêyeke ğayet aram û sakin de birêve diçe, ewî wisan rehet bû. Her halê wî ez dixistim şaşomaşoyeke bi sosret. Wî navê min, welatê min û gellek pirsên din jî ji min kirin. Min piştî cewabên ku wî xwestinbûn danê, min jî baş meraq kir û jê pirsî:

«-Bavo! Ma tu kî yî?»

Wî jî got:

«-Kurê min! Ji min re Ezîz Mehmûd Hûdayî dibêjin.»

Piştre min jê re got:

«-Bavo! Te qencîyeke zehf mezin li min kir? Heke ez sağ û salim li memleket vegerim, ez dixwazim wek deynekî wefadarîyê werim serdana te. Ji kerema xwe, tu adresa xwe bide min?»

Wî însanê rû-xweşik ê mûbarek, wek adres sade got:

«-Kurê min! Heke tu werî Uskudarê, tu ji kê bipirsî, ewê ji te re şanî bidin!»

Di vê navê de em hatibûn yekîneyê. Min bi minnet, mehebbet û hurmet destê vî însanê xweşik maç kir. Min û wî xatir ji hev xwest. Piştre jî ez çûm cem fermandarê xwe.

Fermandarê min ji nişka ve ez li pêşberî xwe dîtim, zehf şaş bû. Ew ji vê mabû heyirî; ez çawa ji çembera agir xilas bûme û ez çawa sağ û salim gihame yekîneya xwe, vêca wî bi qêrîn ji min re got:

«-Te çawa karî werî vir?»

Min jî jê re got:

«Bavekî, yextiyar û xweşik ez anîm.»

Piştî herb xilas bû, ez vegerîyam hatim memleketê xwe. Lêbelê ew qencîya ku Ezîz Mehmûd Hûdayî li min kirî hîç ti wextekî ji aqilê min nederket, va ye di dawîyê de ez hatime Uskudarê, min nîyet kiriye, ez wek deynê wefadarîyê wî zîyaret bikim. Ew kesên ku min ji wan pirsî, ji min re gotin:

«-Ew zatekî mûbarek e.» û ev dever tarîf kirin."

Di vê navê de ew xort huş bû, nefeseke kûr stand û ew daxwaza pêşî ya xwe ji Mûherem Efendî dubare kir:

"-Seydayê min! Ha min û Ezîz Mehmûd Hûdayî bi vî awayî hev û din nas kir. Êdî himmet bikin, min bibin hevdîtina wî!"

Bi vî awayî Mûherrem Efendî mesele bi her alîyên wê ve hîn bû, ew li hemberî vê menzara menewî ya ku jê re bû şahid, zehf hestgerm bû. Wî dînamêrî wekî ku lavlavê jê bike wisan mûddetekê li nav çavê wî dimeyzand, lêbelê Mûherrem Efendî nekarî hîç tiştekî bibêje. Piştre jî xwe piçekî berhev kir, bi dengekî ğemgîn adeta kire minemin, wek xulase jê re got:

"-Kurê min! Ezîz Mehmûd Hûdayî, ne li jîyanê ye, ew dostekî mezin ê Xuda ye, ew di navbera salên 1543-1628'an de jîyaye. Her hal de wî tu ji bo vir gazî kirî ji bo tu jê re fatîhayê bixwînî! Ha ev turbeya wî ye!"

Dema wî xortê îmandar û wefadar ev bersiv bihîst, ew heqîqet ji nû ve li wir hîn bû û heta tu bibêjî bes di bin tesîra wê de ma. Ew bi nîyet û hesreta dîtina wî welî yê ku heyata xwe ji bo wî deyndar bû, hatibû wir, lêbelê sade bi turbeya wî re hevrû hatibû. Ew teserrufatîya manewî ya ku di hengama qada

cengê de jîyabû, ji nû ve ferq xistiyê û wekî şelaleyekê dest bi îskeîskan kir. Bi destên xwe rûyê xwe girt; mûddeteke dirêj kûr kûr girî.

Îmamê Mihraba Hûdayî jî pê re digrî..

❁

Min bîranînek di bara salên zarokatîya dostê Heq Hezretê Mehmûd Samî Remezanoğlû de ku min ji sohbeta wî bi xwe guhdarî kirî, wiha bûye:

Lingên xweha wî ya du salan ji wî biçûktir şel û şeht bûne. Li wê hawîrdora ku ew lê bûne, turbeya dostekî Heq ê bi navê Qaplancî Baba meşhûr hebûye ku xelkê ji bo îstîane'yê (arîkarî-xwestinê) zehf serî lê dida. Rojekê dêya wî, xweha wî û ew çûne turbeya wî zatî zîyaret kirine. Wan ew şeva xwe jî li wir derbas kirine. Dema ew di wextê şevê de li wir nivistibûn, ew bi feryada hemşîreya felçdara xwe şîyar bûne. Dêya wî baz daye, pirs kiriye ka çi ji keça wê hatiye. Xweha wî jî bi kelecan gotiye; kalek ji turbeyê derket, pêl lingê min kir û dewisand. Samî Efendî ev bûyer neqil kir û got; xweha min, ji wê rojê û pê de heta bi dawîya temenê xwe jî di lingê xwe de hest bi êşeke biçûçiktirîn jî nekir û wê karîbû birêve here.

❁

Ev bûyerên ku hatine vegotin hemû û yên wekî wan, ew lutfên îlahî ne ku bi bereketa selahîyeta teserrufatîyê ya ku Cenabê Heq ji bo hinek bendeyên xwe îhsan kirî, hatine jîyîn. Lêbelê divê mirov vê jî jibîr neke ku failê mûtleq, Cenabê Heq e. Arîkarîya wî ji bo bendeyên wî, gerek bi wasîteya ferîşteyên wî be, gerek jî bi wasîteya welîyên bendeyên Xuda be heta bi roja me jî her dewam kiriye û hatiye.

"**X**ewna (sadiqa) mûmînî, beşek ji çil û şeş beşên pêğembertîyê ye." [596]

## 4. RU'YAYÊN SADIQ

Mewhîbeyek ji mewhîbeyên îlahî jî ru'yayên (xewnên) sadiq (durust) in. Ew yek ji rêyên waqifbûna ji heqîqetên ğeybî têne qebûlkirin. Di dema xewê de îrtîbata însanî bi alema maddî re dadikeve sewîya biçûktirîn. Ew hissên rûhî yên ku di bedenê de hatine hebiskirin jî xurt dibin. Ewrên nefsanîyetê ku perde li ser menzarên ulwî danîne ji hev û din têne bi belavkirin û dîtin berraq dibe. Bi vî awayî, di xewnên xwe de temaşekirina li alema ğeybê, ji bo hinek bendeyên salih dibe nesîb. Rastînîya van keşfan jî paşê dema mirov şîyar dibe tê mûşahedekirin û dîtin.

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*Ji (taybetmendîyên) pêğembertîyê sade mûbeşşîrat mene*."

Dema sehabîyan jê pirs kir, jê re gotin;

"-Ya Resûlellah! Mûbeşşîrat çi ne?"

Wî ev bersiv daye wan:

"-*Xewna sadiq e*."[597]

Mûbeşşîrat, bi wî halî hatina dilên mûmînên bi îxlas e ku ew di esnaya xewnan de ji bo mizgînîyên îlahî, îlhaman û telqînan vekirî bin.

Dîsa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di bara îzahkirina "mizgînîya li dinyayê" de ku di vê ayeta pîroz de behsa wê derbas bûye: "**Ji bo wan** (mûmînên mûtteqîyên dostên Heq) **di jîyana dinyayê de, di axretê de jî mizgînî hene!**"[598] gotiye:

596. Buxarî, Ta'bîr, 26; Mûslim, Ru'ya, 6.
597. Buxarî, Tabîr, 5; Mûslim, Selat, 207-208.
598. Yûnus, 10/64.

"*Ew xewnên sadiq in, ku misliman wan dibîne, yan jî ew jê re têne şanîdan.*"[599]

## Ru'ya sê beş in

**1. RU'YAYÊN ŞEYTANÎ**: Ew xewn in ku Şeytan ji mirov re îlqa dike, diavêje, da ku mirov bitirsîne, gîyanê wî bixe tengasîyê, yan jî wî ğemgîn bike. Her wekî ketina ji cihekî bilind, yan jî dîtina wan sahneyên teşqele û felaketan ku însanî di bin bandora xwe de dihêlin. Xewnên wiha ti esasekî wan nîn e. Bi pirranî ev cure xewnên şîlo, û nîvco têne bîra mirovî, vêca ew kesê ku wan xewnan tevlîhev dibîne, divê ew xewnên ku dibîne ji ti kesî re venebêje û ji ber îğwaya şeytên jî penaha xwe bibe ber Xuda.

Li gorî Ebû Seîd el-Xudrî -radîyellahû anhû- rîwayet kiriye, pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Dema yek ji we xewneke ku li xweşîya wî diçe, bibînbe, (bila zanibe ku) ew ji Xudê Teala ye. Bi vê sedemê bila ji Xuda re hemdê bike û bila xewna xwe (ji mirovan re) vebêje.*"

Rîwayeteke din jî wiha ye:

"*Bila wê xewnê sade ji bo hezkirîyê xwe bibêje. Heke ew xewneke ku li xweşîya wî naçe, bibîne, ew jî ji Şeytan e. Bila ji ber şerrê wê penaha xwe bibe ber Xuda û bila wê hîç ji ti kesî re nebêje. Hingê ew xewn, ti ziraré nade wî.*"[600]

Dîsa di hedîseke şerîf de wiha hatiye gotin:

"*Dema yek ji we xewneke ku li xweşîya wî naçe, bibîne, bila sê caran li rexê çepê xwe tif bike; bila ji şerrê şeytên jî sê caran penaha xwe bibe ber Xuda; bila xwe ji terefê ku li serê razabû jî vegerîne ser terefê din.*"[601]

**2. XEWNÊN KU BI TESÎREKE DERVEYÎ TÊNE DÎTIN**: Ew menzara ne, ku wek bi hal û xeyalên mirovî ve bend ji bo xewnên wî xuya dibin. Mesela wekî vê ne; mirovekî ku xwarina şor xwaribe, di xewna xwe de dibîne ku ew zehf avê vedixwe, yan jî wekî mirovekî ku meseleyeke zêhnê wî zehf

599. Tirmizî, Ru'ya, 3.
600. Buxarî, Ta'bîr, 3,46; Mûslim, Ru'ya, 3.
601. Mûslim, Ru'ya, 5.

meşğûl dike, ew mesele xwe di xewna wî de dide xuyakirin. Ta'bîra van cure xewnan jî nîn e. Ew bê esas in.

**3. RU'YAYÊN SADIQ** (XEWNÊN DURUST) **IN**: Xewnên wiha bi awayekî zelal têne bîra mirovî. Ev cure xewn, ji terefê Cenabê Heq ve ne, ew di mahîyeta mizgînîyê de ne, yan jî di mahîyeta îqazê de ne. Hinek ferîşteyên erkedar van cure xewnan ji ummu'l-kîtabê (Lewhu'l-Mehfûzê) teleqqî dikin werdigrin û bi ferman û destûra Cenabê Heq di rûhê însanê razayî de fetrîm dikin.

Xewnên durust, tîrêj in ku ji Lewhu'l-Mehfûzê ji bo paşerojê xuya dibin. Di berî pêğembertîya Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de xewnên sadiq heta bi şeş mehan dewam kirine.

Di hedîsên şerîf de hatiye gotin:

"*Dema zeman*[602] *ji hev nêzîk dibe hema bibêje xewna mûmînî hîç derew dernakeve. (Wekî wî dîtî bicih tê). Xewna (durusta) mûmînî, beşek ji çil û şeş beşên pêğembertîyê ye. Tişteke ji pêğembertîyê be jî bi derew nabe.*"[603]

*Xewn sê beş in: Ya yekê ru'yayên salih in, mizgînîyek ji Xuda ye; ya duduyan ew tirs e, yan jî ğem e ku şeytan wê dide; ya sisêyan jî ew tişt in ku însan wan ji xwe bi xwe re dibêje. Kî tiştekî ku li xweşîya wî naçe, bibîne, bila wê ji dîgeran re nebêje; bila derhal rabe nimêj bike..*" [604]

"*Ji we ewê ku di xewnê xwe de rasttir e, ew e ku di axaftina xwe de rastgotir e.*"[605]

"*Sadiqtirîn ru'ya, ew xewn e ku di wextên seheran de tê dîtin.*"[606]

Ru'yayên sadiq, îhtiyaca wan heye ku ew ji terefê ehlê xwe ve werin tabîrkirin, yanî şîfreyên wan werin vekirin. Tabîra xewnan jî îlmek ji dana

602. Şîrovekarê hedîsê îfadeya "**ji hev nêzîkbûna zemanî**" wek yeksanbûna şev û rojê, nêzîkbûna ji qiyametê, yan nêzîkbûna ji sibehê (wextê seherê) yan jî kurtbûnîya zemanî, eşkere kirine.
603. Babeta bûna xewnên durust beşek ji çil û şeş beşên pêğembertîyê wiha hatiye eşk - rekirin: Pêğembertîya Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- 23 salan dewam kiriye. Şeş heyvên pêşî yên pêğembertîyê, ji ber ku bi awayê xewnên sadiq bicih hatiye, ev mawe (şeş meh) dibe hemberê "çil û şeş yeka" bîst û sê salan.
604. Buxarî, Ta'bîr, 26; Mûslim, Ru'ya, 6.
605. Mûslim, Ru'ya, 6.
606. Tirmizî, Ru'ya, 3/2274.

Heq Teala ye. Carina Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di piştî nimêjan de li xewnên ku sehabîyan dîtibûn, guhdarî dikir, ew tabîr dikirin û tecellîyên ku di bara pêşerojê de xuya dibûn, bi vî awayî îzah dikirin.

Bi rastî tabîr dana xewnan, îlmeke ku pişta wî ji bo hinek rêzerêç û qaîdeyan tê paldan. Ewên ku ji vî îlmî waqif bin jî ji wan re “tabîrzan” tê gotin. Ji bo îfadeya giştî ya mirovan, gellek behremên bi tabîra xewnan re elaqedar hatine telîfkirin û nivîsandin. Ji navbera van hemû berheman jî Tabîrnameyên Îbn-î Sîrîn û Hezretê Mûhyîddîn-ê Erebî meşhûr bûne. Bi pirranî bi îqtîbaskirina ji wan berheman û ji wan girtin heta roja me ya îroyîn jî kitêbên curecur li holê hatine danîn. Digel vê jî sirf bi pişta xwe bestina bi malûmatên ku di van kitêban de mewcûd in, tabîr dana xewnan jî mehzûrdar e. Lewra esil beşa mezina tabîrê “keşf” e. Ji bo vê, ew mirovê ku tabîrê li xewnan dide divê xwedî îqtîdareke manewî be. Heke na, mirov wê bi tehlûkeya tabîra şaşa xewnan re rûbirû bibe. Lewra Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

“*Ru’ya (xewn) li gorî tabîrzanê pêşî bicih tê*.”[607] Ji lewma divê mirov xewnên xwe ji bo mirovên ne ehlê tabîrên wan bin venebêje. Ewên ku ji vî îlmî waqif bin jî gotine; “tabîra pêşî giring e; tabîrên paştir jî derbasnedar dimînin.”

Wekî ku di peyamnameya bi navê “*Mîzanu’n-Nufûs*”[608] ê de hatiye vegotin îlmê tabîrê jî du beş in: “Enfusî” û “Afaqî” ne. Herçî beşa “enfusî” ye, ewam-xewas herkes dikare wê bidest bixe. Yanî tehsîla wê beşa îlmê tabîrê bi awayê ji guhdanê bihîstin, yan jî bi awayê komkirina ji berhemên curecur ên ku kesên ehl berê tabîr li xewnan dane, mûmkin e. Bi xêra wan tabîran însan dikare xewnên ku dişibihin hev bi pişta xwe paldana li ser tecrûbeyên berê, wan tabîr bike..

Her yek ji heyberan di xewnê de wekî peyveke di ferhengê de ne. Yanî ew adeta zimanekî cuda ye. Di vî zimanî de ew maneya ku ji bo heybera hatiye dîtin, tê dayîn, xwe dispêre peywendîyeke dûr. Yanî ew bi temamî ne bêpalpişt û bêsedem e. Mesela mar dijmin e. Ev mane, xwe dispêre qisseya Adem -eleyhisselam-. Her hal û hereketa ku di wî de tê dîtin, wek helwesteke

607. Îbn-î Mace, Ta‘bîr, 7.

608. Ev peyamname, ya Hafiz Xulûsî yê dersamê Mizgefta Bayezîd e. Ew di 1305 h. De li Îstanbûlê hatiye çapkirin.

dijminî tê îzahkirin. Lêbelê heke marek riprast, yan jî wekî mirî bêbizav were dîtin, hingê ew bi rê tê tabîrkirin.

Li alîyê din, di tabîra xewnan de gellek kartêker û mûesir rol dileyîzin. Roj, demsal, şeva ku xewn têde hatiye dîtin û yên wekî van. Mesela xewna ku zivistanê hatiye dîtin, dereng bicih tê. Lêbelê xewna ku berê sibehê tê dîtin, zû derdikeve. Lêbelê ev tabîr, ji ber ku tebîatê her xwediyê xewnê cuda ye, pirranîya caran kêm in.

Herçî îlmê tabîrê yê beşa “Afaqî” ye, bi xewasan taybet e û îhtiyaca wî bi keşfê heye. Lewra pê zanîna gelo ew şeytanî ye, yan jî Rahmanî ye, ji hev cudakirina wan çawanîyeke bi mezherbûna bi sinûhatên îlahî ve bend e. Zêdebarî vê jî tebîatên mirovan jî ji ber ku ji hev cuda ne, dibe tabîra her du mirovên ku heman xewn dîtibin zehf ji hev cuda be.. Fehmkirina vê ziravîyê jî selahîyeteke manewî dixwaze.

Çawa dema du kes hatine cem Hezretê Îbn-î Sîrîn û jê re gotine; me di xewna xwe de dîtiye ku me wek xutbexwên xutbe dixwend. Wî ev tabîr li xewna wan daye; wî ji yekî ji wan re got; tu yê biçî hecê û ji yê din re jî got; tu yê werî îdamkirin. Bi rastî jî di piştî mûddetekê de yek ji herduyan diçe hecê, ewê din jî tê îdamkirin.

Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- vedibêje:

“Min di xewna xwe de dît ku sê heyv diketin hicra (odeya) min. Min xewna xwe ji bavê xwe Ebûbekr -radîyellahû anhû- re vegot. Ew huş bû, bersiv neda. Vêca dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wefat kir û ew di oda min de hate definkirin, Ebûbekr -radîyellahû anhû- ji min re got:

«-Ha va ye, ji te re yek ji hersê heyvan (ku te di xewna xwe de dîtibûn) û çêtirînê wan!»”[609]

Dema mûhacir hatin Medînê, qura hatibû kişandin û Osman bin Mez‘ûn li para malbata Ummu’l-‘Ela el-Ensarîyye -radîyellahû anhû- ketibû. Wan derhal ew li mala xwe bicih kir û bi mêhvan kir. Lêbelê ew di piştî mûddeteke kurt de nexweş ket. Ew bi dermankirina wî ve meşğûl bûn, feqet ew şîfa nebû û wefat kir. Ummu’l-‘Ela, Osman -radîyellahû anhû- di xewna xwe de dît; çeşmeyeke herkbara wî hebû. Wî derhal xewna xwe ji Hezretê Pêğember re vegot. Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

609. Mûwetta, Cenaiz, 30.

“-*Ev amelê wî ye, ji bo wî diherike.*”[610]

Bûyereka dîgera ku di esrê seadetê de çêbûye jî wiha ye:

Jinek hate cem Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- serî li wî da ji bo xewna xwe bide tabîrkirin. Ew jê re dibêje; min di xewna xwe de dît ku sitûna nîvî ya mala min şikest û li pêşîya min ket.

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wê jinê pirs kir; mêrê te heye, yan nîn e, heke mêrê te hebe jî vêga ew li kuderê ye. Dema jinê jê re got; mêrê min heye, çûye rêwengîyê û ew hê jî venegerîyaye. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- mizgînî dayê; mêrê te wê sağ û salim ji rêwengîyê vegere malê, hûnê pev keyfxweş bibin û xewn jî wekî ku wî tabîr lê dayî, bicih hat.

Di serdema xîlafeta Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- de dîsa vê jinê dema mêrê wê li rêwîtîyê bû, heman xewn dît û vê carê ew heman xewna xwe ji xelîfeyî dipirse. Hezretê Siddîq -radîyellahû anhû- jî aynî wekî ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pêşî jê pirs kiribû, wî jê pirs kir, wî bi mêrê wê re elaqedar malûmat jê wergirtin û piştre ji wê jinê re got; mêrê te li rêwengîyê çûye ber rahma Xuda.

Çi dema wê jinê jî di nav telaş û şeweşê de ji Ebûbekr -radîyellahû anhû- re got:

“-Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di tabîra heman xewna min de gotibû; mêrê te wê sağ û salim vegere.” Hezretê Siddîq jê re dibêje:

“-Rast e, ji wî re wisan hatibû keşfkirin, ji min re jî îlham wiha hatiye.” Piştre hê mûddeteke dirêj nebûrî tê fehmkirin ku tabîra Siddîq ji bo xewnê durust e.

Ji ber ku di esnaya xewnê de di alema mîsalê de çendîn halên xeyalî û nadîyar ên di ser aqil û fikr re têne mûşahedekirin, naxwe rast tabîrkirina van ğayet zor e, heta bê dîrayeteke manewî ne mûmkin e.

Di Qur‘ana Kerîm de tê zanîn ku Cenabê Heq ev îlm daye Yûsuf -eleyhisselam- jî.[611]

610. Buxarî, Ta’bîr, 13, Cenaîz 3, Şehadet 30, Menaqibu’l-Ensar 46.
611. Binêrin. Sûretê Yûsuf, 12/6 û 111.

Çawa dema Hezretê Yûsuf -eleyhîsselam- di zindanê de bû, li xewna nanpêj û saqîyê serayê guhdarî kiribû. Nanpêjî jê re gotibû; dema min teştek nan li ser serê xwe dibir ji hewayê ve çûkan êrîş dianîne ser min û nanê min dixwarin. Yûsuf-eleyhisselam- ev xewna wî, wiha tabîr kiribû; tu yê ji terefê padîşahî ve werî îdamkirin, ji hewayê ve wê çûk werin goştê serê te bixwin. Dema saqî jî jê re got; min di xewna xwe de dît ku ez wekî berê li serayê dibûme saqîyê padîşahî, Yûsuf -eleyhisselam- xewna wî wiha tabîr kir, jê re got:

"-Tu yê dîsa bibî meqbûlê padîşahî û saqîtîya wî bikî." Bi rastî ev keşf, aynî wekî ku di tabîrê de jî hatiye gotin, wisa xuya bûne.

Wekî ku me li jorê jî îfade kirî, beşa mezina îlmê tabîran xwe dispêre keşfê. Ji bo vê, divê tabîrzan xwedî dereceyeke manewî be. Çawa dema me di Mekteba Îmam-Xetîba Îstanbûlê de dixwend Merhûm Celaleddîn Oktem Xocaefendî ku seydatîya me dikir, ew di wextê xwe de di tabîra xewnan de mamosteyekî rasteqîne bûye. Ew îfade dike ku dikare bi dilekî berraq ê rûhanî tabîra xewnan bike, îsabeta tabîra xewnê bi teqwadarîya tabîrzanî ve bend e.

Xocayê me Celaleddîn Oktem -rahmetullahî eleyhî-, di salên xortanîya xwe de wî di lîseyan de dersên dînî didane xwendin û wî bi dilekî zindî heyateke li ser teqwayê jîyaye. Di wan salan de bi tabîrên îsabetdar ên xwe meşhûr bûbûye. Wî piştî gellek ji mîsalên tabîrên îsabetdar ên xwe vedigotin, xocayê me wiha digot:

"-Zemanek hat ev perde li ber min hate girtin. Lewra dersên dînî hatin leğûkirin. Ez jî wek xocayê felsefê tayîn kirim. Dema min dest bi avjenîkirina di nav nezarîyên felsefî de kir ku ew mehsûla aqil e, vêca kehnîyên dilê min çikihan."

Mîsaleke meşhûra dîger ji mîsalên di bara xewnên sadiq de jî wiha ye:

Îmam Bûsîrî şairê Qasîdeya Burde ya meşhûr, rojekê dema ew diçe mala xwe di rê de li pîrekî fanî yê rû-nûranî rast tê. Ew zatê yextiyar jê dipirse, jê re dibêje:

"- Ya Bûsîrî! Ma te îşev di xewna xwe de pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dît?"

Îmam Bûsîrî wiha bersiva wî dide, jê re dibêje:

"-Ne xêr, min ew nedît."

Pîrê fanî di piştî vê axaftina kurt de tiştekî din nabêje û ji wî cuda dibe, diçe. Lêbelê ev peyvên wî di dilê îmam Bûsîrî de eşq û mehebbeta wî ya ji Hezretê Pêğember dide coşandin.

Wê şevê Îmam Bûsîrî di xewna xwe de Hezretê Pêğember dibîne û dema ew şîyar dibe jî ferqê dixiyê ku nefsa wî bi keyf û aramîyê tije ye.

Vêca ew çendîn medhîye'yan dinivîse ku di wan de medhê Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dike û gellek evîndarên Pêğember di deryaya mehebbetê de dide noqkirin.

Piştî mûddetekê nîvê bedena wî felc dibe. Ew dikeve rewşekê ku êdî nikare birêve biçe, nikare hereket bike. Wê demê Qesîdeya Burde ya meşhûr dinivîse û bi vê jî ji Cenabê Heq şîfayê taleb dike.

Wê şeva ku ew Qesîdeya xwe temam dike di xewna xwe de Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibîne û Qesîdeya xwe jê re dixwîne. Piştî wî temamê qesîdeya xwe jê re xwend, pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi destên mûbarek ên xwe endamên felcdarên Îmam Bûsîrî mesih dike. Esera çi mehebbeteke kûr e ku dema Îmam Bûsîrî şîyar bû, dibîne ku wa ye nexweşîya wî ji wî çûye û ew ji Xuda re şukirê dike.

Ew di sibeha wê şevê de wek bi sihhata xwe gihayî dema di nav surûr û keyfxweşîyê de diçe mizgeftê di rê de li Hezretê Şêx Ebûr-Reca rast tê. Hezret jê re dibêje:

"-Ya Bûsîrî! Ji kerema xwe, wê qesîdeya xwe ya ku te medhê Fexrê Kaînatê daye, (ji min re) bixwîne?"

Îmam Bûsîrî jê dipirse, jê re dibêje:

"-Gellek qesîdeyên min hene ku min di wan de medhê Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- daye. Tu kîjanê dixwazî?"

Şêx Ebûr-Reca jê re dibêje:

"Ez wê ya ku te li hizûra Hezretê Pêğember xwendî, dixwazim. Lewra min dît ku Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji vê qesîdeyê zehf memnûn e."

Îmam Bûsîrî dizanîbû ku hîç ti kesî hê ev qesîde nebihîstiye, vêca di nav heyretan de dimîne.[612]

Tê dîtin ku li alema Îslamê gellek mîsalên keşf, fîraset, îlham û xewnên sadiq hene, şanî didin ku bi wesîleya wan gellek sirrên alema ğeybê ji kesên sadiq re eyan bûne.

Beyana: "**Li asîmanan û erdê ji Xuda pê ve hîç ti kes ğeybê nizane.**."[613] jî heqîqeteke îlahî ye. Naxwe li vir îhtiyac bi îzahekê heye.

Ev îzah di esasê xwe de di naveroka vê hedîsa Qudsî de: "**Dema ez ji evdê xwe hez dikim** (adeta) **ez ji bo wî dibim ew zimanê wî yê ku pê diaxive, ew dilê wî yê ku pê aqil dike, ew guhê wî yê ku pê dibihîze, ew çavê wî yê ku pê dibîne, ew destê wî yê ku pê digre û ew lingên wî yê ku pê birêve diçe.. Ew çi ji min bixwaze, hemin ezê bidimê. Heke ew penaha xwe bîne ber min, ezê wî biparêzim**."[614] mewcûd e. Merkeza keşf û îlhamê ew rûh e ku Xuda di însanî de pif kiriye. Heke çi qeder di zahir de serî bi çavan binêre jî; li hemberî "nûra îlahî" ya di wî çavî de mewcûd perdeyên ğeybê hene, Xuda bi qeder xwestina xwe dikare wan bê hukm bike. Di vê rewşê de dîsa Xuda ye, ewê ku ğeybê şanî dide. Heke na, di bendeyî de ew qudret û şîyan nîn e ku pê karibe ğeybê bibîne, wê bibihîze û wê bizane. Zanîna bendeyî bi saya wê dan-zanînê dibe ku Xudê Teala ji bendeyî re lutf bike.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

"(Resûlê min!) **Ev ji xeberên ğeybê ne, ku em bi rêya wehyê wan ji te re didin zanîn**.."[615] Bi vê ayetê agahîyê dide ku ew hinek heqîqetên ğeybî dide zanîn.

Lêbelê ev jî heye ku ğeyb jî du cure ne: **Ğeyba mûtleq û ğeyba îzafî**.

Ew ğeyba ku ji Xuda pê ve ti kes wê nizane, **ğeyba mûtleq** e. Zanîna kesekî ya tiştekî ji ğeybê ne bi dîrayeta wî bi xwe ve bend e. Ew bes bi dan-zanîna Xuda, însan dikare wan bizane. Ev pê zanîn jî bi qeder lutfa Wî ye.

Herçî **ğeyba îzafî** ye, ew çawanîyeke ji bo hinek zatan malûm e, ji bo hinek zatan jî mechûl e. Mesela diravên di berîka kesekî de ew tenê bi wan

612. Binêrin. Îlhan Armûtoğlû, Wergera Menzûmeya Qesîdeya Burde, rûp. 7-10.
613. Neml, 27/65.
614. Buxarî, Rîqaq, 38.
615. Alî Îmran, 3/44.

dizane, ji bilî wî kesekî din pê nizane. Naxwe ew tiştê ku ji bo hinek mirovan ğeyb e, dibe ku ew ji bo hinek mirovên din ne ğeyb be.

Li vir ew ğeyba ku ji bo bendeyên welî yên Xuda mewzûbehs e, ğeyba mûtleq e ku ew bes bi dan-zanîna Xuda û bi qeder ku wî ji wan re dabe zanîn, dikare were zanîn.

❁

Dostên Heq ên rasteqîne, di texmîn û teşxîsên xwe de çi qeder îsabet bikin, rast derkevin jî ji ber ku xwedî keşf û fîraset in, ew nakevin îddîayan. Hinek însanên wisan hene ku dema mirov li rûyên wan binêre, Xuda di bîra mirovî tînin. Ji zimanên wan dilopên hikmet û marîfetê dirijin. Heke tabîr caiz be, ew naaxivin, her wekî ku Xuda wan dide axaftin. Digel vê jî ew li hemberî lutfên Heq du tew bûne. Lewra însan heybereke lawaz e. Ew dikare ji tixûbê xwe bibûre û xwe bi ber ğurûrê ve berde. Xwe mezin dîtina însanî jî mezintirîn felaket e. Di vê rewşê de Cenabê Heq jî dikare ji bo şîyarkirina bendeyê xwe bêçaretîyê bi wî bide t‘amkirin, çêjandin.

Di esilê xwe de fîraset, keşf û xewnên sadiq, ji wan lutfan îbaret in ku Xuda bi wan heqîqet ji bo bendeyên salih ên xwe îlham kirine.




**"Qelb bes bi zikrkirina Xuda mûtmein dibin**." (Re'ad, 13/28.)

# HINEK MESELEYÊN TESEWWUFÎ

**Gelî mirovên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û ji bo nêzîkbûna ji Wî li wesîleyê (sebebê) bigerin!."** [616]

## A. TEWESSUL

Her cure rê û wasîteya ku bendeyî bigihîne emanca esasî û meqsûda wî ya di aferîna wî de **wesîle'**yek e. Ji bo nêzîkbûna ji Xuda, xwe asêgirtina bi van wesîleyan jî bi **tewessul**ê hatiye bitabîrkirin û îfadekirin. Bi maneya hê xusûsîtir jî tewessul, bi umîda ku wê ji bo qebûlbûna dûayan bibe sebeb bi wesîlekirina esmayên husna, Qur'ana Pîroz, amelên salih, pêğember û zatên salih ji bo xwestina tiştekî ji Xuda ye. Maneya wê ji bo bidestxistina tiştekî ku tê arzûkirin, yan jî ji bo ji ser xwe rakirin û defkirina tiştekî ku nayê arzûkirin ji wî dûakirin û penaha xwe birina ber wî ye.

Xudê Teala di ayeta sih û pêncemîna Sûretê Maîde de dibêje:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَابْتَغُوا إِلَيْهِ الْوَسِيلَةَ

"**Gelî mirovên ku îman anîne! Ji Xuda bitirsin û ji bo nêzîkbûna ji wî li wesîleyê** (sebebê) **bigerin!**.." [617]

Di ayeta pîroz de peyva "wesîle"yê wek mûtleq û bêqeyd, yanî bêyî hîç ti gef û tehdîdek hebe, hatiye zikrkirin. Li ser vî esasî, ji wesîleya ku ji bo nêzîkbûna ji Xuda divê li wê gerîn bibe meqsûd; nimêj, rojî, cîhad û amelên salih ên wekî van e. Hinek tefsîrzanan jî bi îlawe li ser van amelên salih ên ku hatine jimartin, bi emanca exlaqê xwe kirina bi exlaqê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ketina bin terbîya mûrşidekî kamil jî wek "wesîle"yek (a nêzîkbûna ji Xuda) îfade kirine..

616. Maîde, 5/35.
617. Maîde, 5/35.

Berê dana alim û salihan ya bende ji bo ketina rêya Rebbê wî, ne faalîyeteke di mahîyeta rahibtîyê de ye. Ew, îrşad û îqazek e. Ew di rêyên ku di wan de birêveçûn tê kirin de ji rêbertîyê îbaret e. Di hemberê vê de di Krîstîyanîyê de rahibîtî heye. Bi dîtina wan, rahibîtî di navbera Xuda û bendeyê wî de wasîteyeke zerûrî ye. Îslam jî vê red dike. Yanî tesewwirkirina kesekî sêyem di navbera Xuda û bendeyê wî de nabe. Bende, bi şexsê xwe û yekser dikare di her an û gavê de berê xwe bide Rebbê xwe û jê re îbadetê bike.

Digel ku rewş ev e jî, lêbelê dîsa jî hinek îtîraz hatine kirin; çawa di rahibîtîyê de wisa ye, mûrşid jî dikevin navbera Xuda û mirîdê xwe yê ku di rêya manewîyatê de bipêş dikeve û li hemberî vê wezîfeya ku ew pê radibin îtîraz kirine. Haleveku rahibîtî, ev e ku bêyî hebûna rahibî çênabe ti kes ji Xuda re evdînîyê bike. Ev, di Krîstîyanîya hatî tehrîfkirin de mewcûd e. Lêbelê ew wezîfeya ku alim û şêx îcra dikin, bi ti awayan bi ya di rahibîtîyê de nayê qiyaskirin.

Di vê babetê de tenkîd û rexne lê girtin, peyvên ne guncaw û ne di cih de ne. Ew ji vê diwelide ku ew maneya ferhengîya tewessulê derdixin plana pêşîyê (û wan rexneyên xwe li gorî maneya luğewîya tewessulê li wezîfeya mûrşidan digrin). Mirovên wiha mahîyeta rasteqîneya tewessulê piştçav dikin. Ev cure îtîraz bi zehfî di navbera însanên li derveya mûhîta (derdora) tesewwufî yên ku ji halên rastî yên mûrşidê kamil ne agah û waqif de, derdikevin. Carina jî hereketên çewt û şaş ên hinek mûntesibên tesewwufî ku bi awayê layiq metodên tesewwufî hezm nekirine, dibine sebeb ku hinek mirov di bara tesewwufê de wiha bifikrin. Lêbelê heqdar jimartina vê jî ne mûmkin e. Lewra bi sebeb bêçaretî, bêkîfayetî û hinek caran jî nîyeta xiraba mensûbê dozekê, çawa îtîrazkirina li wê dozê ne rast be, aynî wisan di vê meselê de jî bi mal-kirina qusûrên kesan ji bo dozên wan jî ne rast e. Naxwe qusûrên wiha şexsî xistina stûyê giranbihayên bilind ên ku ew di temsîlkirina wan de îddîa dikin, ji hêla mentiqî ve jî ne rast e. Çawa îro hîç ti kesê ku aqilê wî li serê wî be, nikare ji ber qusûrên mislimanan Îslamê bixe berpirs.. (Aynî wisan ti kes nikare ji ber qusûrên hinek mûntesibên tesewwufê jî tesewwufê bi xwe bixe berpirs!)

Wekî ku me li jorê jî hewldabû îzah bikin; alimên rasteqîne di talîm û dan hînkirina îlmên zahirî de çawa rêberîyê ji xwendekarên xwe re dikin, aynî wisan mûrşidên heqîqî jî di rêyên manewî de bi wezîfeyeke wekî ya alimên îlmê zahirî radibin, yanî erka rêbertîyê îfa dikin. Naxwe ev wezîfeya rêbertîyê

ne ketina navbera bende û Xuda ye. Lêbelê ew ji vê hewldan û ğeyretê îbaret e; mûrşidên kamil pala xwe didin ser tecrûbe û dîrayeta xwe, di rêya çûna cem Xuda de, mirovan îrşad dikin, wan îqaz dikin, wan ji tehlûke û xetaran xilas dikin û dikin ku ew di rêyên xwe de bi selametî mesafeyan qut bikin û bi xêr û xweşî bigihin mirada xwe. Çawa di esnaya rêwengîyekê de merkeba me ne ğaye ye, lê navgîn û wasîte ye, aynî wisan mûrşidê kamil jî mûallimek e, perwerdeya qelbî ji bo mirîdî talîm dike, dinyaya hundurîna wî bi exlaqê Xuda û Pêğemberê wî tezyîn dike, xweş dixemilîne. Heta hinek mirîd -heke nesîb û îstîdada wan hebe- bi lezûbez tereqqî dikin, ji mûrşidê xwe yê ku di serî de jê re rê şanî daye, jê re ufûq û aso vekirine, di dawîyê de ji wan jî derbas dibin û wan li pey xwe dihêlin. Li gorî li hev qiyaskirineke zahirî çawa ev yek di mîsala Şems-ê Tebrîzî û Hezretê Mewlana de wisa ye.[618]

Yanî mûrşidên kamil digel hemû ehemmîyet û qîmetê xwe jî bi ti awayan ne ğaye û emanc in, lêbelê wasîte û navgîn in.

Bi rastî tewessul, maneyeke wê ev e; mirov mûrşidê kamil ku ew bi xwe mûmînekî kemal û ezmûndar e, ji bo xwe bi rêber bike, serî li rêberîya wî dide û ji îrşad û feyza wî îstîfade dike ji bo karibe salîmane di wan rêyên zehf zirav de derbas bibe ku şemitîna lingan di wan de îhtîmaleke biqewwet e. Maneyeke dîgera tewessulê jî ev e; mirov hewl dide bi hurmeta wan kesên ku Cenabê Heq ji wan hez dike, merama xwe li Wî erz bike û bi vî awayî meqbûlîyetê bi dûaya xwe bide qezenckirin. Heke na, maneya wê ne qudsîyet dana bi bendeyên salih ên Heq Teala ye.

Îmam Malik -rahmetullahî eleyhî- dibêje:

“Di daxwazên xwe de Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo xwe bi wesîle bikin!..”

Îmam Cezerî -quddîse sirruh- dibêje:

“Ji bo qebûlbûna dûayên xwe pêğemberan û kesên salih bi wesîle bikin!..”

618. Çawa Şems-ê Tebrîzî ew okyanûsa manewî ya di rûhê Hezretê Mewlana de meknûz keşf kir, ew adeta çîkek bûye ji bo pêxistina deryayeke petrolê çavnêrî dikir. Memûrîyet û selahîyeta wî ji vê îbaret bû. Çawa dema wî agir bi vê deryayê xist, ew bi înfîlaqeke/peqîneke mezina manewî re rûbirû ma ku ew bi xwe jî di nav gurî û pêta vê ummanê de ma.

Çawa bi vê babetê re elaqedar çend mîsalên tewessulê (bi wesîlekirinê) wiha ne:

Tê ragihandin ku Îmam Subkî di berhema xwe ya bi navê “Şîfaus-Seqem”ê de wiha dibêje:

“Tewessula bi Mezinê me Nebiyyê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- di her hal û karî de caiz e. Însan dikare wî ji bo xwe berî hatin aferandina wî, piştî hatin aferandina wî, di esnaya heyata wî ya dinyayê de, piştî wefata wî di dema ew di alema berzexê de ye, piştî ji nû ve ew were sağkirin, li meydana Arasata Qiyametê û li cennetê jî bi wesîle bike..

Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhû- vedibêje:

Di navbera yehûdîyên Xeyberê û Ğetefan’îyan de ceng hebû û yehûdî kengê bi Ğetefanîyan re rûbirû dihatin ew têkdiçûn. Di dawîyê de qerar pê dan ku penaha xwe bibin ber vê dûayê:

“Hey Xudayê me! Em ji te dixwazin Tu ji bo heqê wî pêğemberê ummî yê ku te wade daye tu wî di axir zemanî de bişînî, me mûzeffer bike.” û dema ew bi Ğetefanîyan re rûbirû hatin ev dûa kirin. Di encama cengê de Ğetefanî bezandin, têkbirin. Lêbelê çi dema Hezretê Mûhemmed -sellellahû eleyhî we sellem- bi pêğembertî hate şandin, ew înkar kirin. Vêca Xudê Teala ev ayeta pîroz nazil kir:

وَكَانُوا مِنْ قَبْلُ يَسْتَفْتِحُونَ عَلَى الَّذِينَ كَفَرُوا فَلَمَّا جَاءَهُمْ مَا عَرَفُوا كَفَرُوا بِهِ فَلَعْنَةُ اللَّهِ عَلَى الْكَافِرِينَ.

“.. **Wan berê** (navê wî pêğemberî bikar dianîn û ji bo heqê wî digotin;) **li dijî yên ku kafir bûne serkeftin her dixwestin, vêca çi dema ewê ku nas dikirin ji wan re hat, vê carê ew înkar kirin. Ha laneta Xuda li ser kafirên wiha ye**.”[619]”[620]

Di piştî wefata pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de li Medînê tinetî û ğelayeke dijwar çêbûbû. Xelkê li hemberî vê rewşê serî li Hezreta Aîşe -radîyellahû anhû- da. Dêya me Aîşe ev wesîyet li wan kir:

619. Beqere, 2/89.
620. Qurtûbî, II, 27; el-Wahidî, Esbabun-Nuzûl, rûp. 31.

"*-Herin ser qebra şerîfa Mezinê me Nebîyyê Mûhterem, ji banê wê pencereyekê vekin. Bila di navbera Mezinê me û asîmanî de perdeyek nemîne!*"

Çawa dema wan jî wisan kir baran zehf barî, gîya şîn û mezin bûn, hêştir jî qelew bûn. Heta navê "Amu'l-Fetiq: Sala Pirr Bi Nîmet" li vê salê kirin.[621]

❁

Însanek dem bi dem ji bo îhtiyaceke xwe diçû cem Osman bin Effan -radîyellahû anhû- lêbelê Osman -radîyellahû anhû- ji wî re îltîfat nedikir, îhtiyaca wî nedidît. Ev kes li Osman bin Huneyf rast hat û gilehê rewşa xwe ji wî re kir. Osman bin Huneyf -radîyellahû anhû- jê re wiha got:

"-Here evdestxanê, li wir desmêj bigre. Piştre here mizgeftê du rekat nimêj bike. Piştre jî bibêje:

«Xudayê min! Bi hurmeta pêğemberê me, pêxemberê rahmê Mûhemmed -sellellahû eleyhî we sellem- ji Te dixwazim û berê xwe didim Te. Ya Mûhemmed! Ez te bi wesîle dikim ji bo hemberê îhtiyaca min were dayîn, ez berê xwe didim Rebbê xwe. Xudayê min! Wî ji bo min bike şefaetkar!» û daxwaza xwe wiha bibêje."

Ew kes çû, şîretên ku li wî hatibûne kirin, kirin û ew hate ber derîyê Osman bin Effan. Dergehvan bi destê wî girt û ew bire cem Osman -radîyellahû anhû-. Hezretê Osman ew li ser mindera li cem xwe da rûniştandin. Hezretê Osman ji wî pirs kir, jê re got:

"-Îhtiyaca te çi ye?" Wî jî îhtiyaca xwe got. Hezretê Osman derhal arzûya wî anî cih û jê re got:

"-Heta vêga hîç nehatibû aqilê min ku çêdibe îhtiyaceke te hebe. Piştî vêga jî heke îhtiyaceke te çêbibe, were cem me!"

Ew zilam ji cem wî derket, çû cem Osman bin Huneyf û jê re got:

"-Xuda bi xêrê mûkafatê bide te, heta te bi xelîfe re xeber neda îhtiyaca min nedihate dîtin û îltîfat ji min re nedihate kirin."

Vêca Osman bin Huneyf -radîyellahû anhû- jê re wiha got:

621. Darimî, Mûqeddîme, 15.

“-Wellahî ez bi xelîfe re neaxivîme. Lêbelê ez ji bo bûyerekê bûbûme şahid. Nebînek (korek) hate cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, jê re got:

«-Ya Resûlellah! Lavlavê ji Xuda bike, bila nexweşîya di çavê min de jê bibe! Korbûna çavê min zehf li zora min diçe!..»

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

«-*Heke te bive, sebr bike, ev ji bo te hê bi xêrtir e.*»

Çi dema wî yê kor jê re got:

«-Ya Resûlellah! Min ti kes nîn e ku bi destê min bigre û min bibe. Ev hal zehf min diêşîne. Ji kerema xwe ji bo vebûna çavê min ji min re dûa bike!» Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî got:

*«-Here desmêj bigre! Piştre du rekat nimêj bike! Piştre jî wiha dûa bike:»*

*“Xudayê min! Ez bi Nebî Mûhemmed Pêğemberê Rahmê (bi hurmeta wî) ji Zatê Te dixwazim û berê xwe didim Te.. Ya Mûhemmed! Ji bo dana îhtiyaca min bi Te berê xwe didim Rebbê xwe! Xudayê min! Wî ji bo min bike şefaetkar!..”*[622]

Li gorî rîwayeta Hakim ev zêdehî jî têde heye; ewê kor di halekî ku çavê wî dibîne de rabû ser xwe.”[623]

❀

Li gorî ji Ûtbe bin Ğezwan -radîyellahû anhû- hatiye rîwayetkirin, Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

“*Heke yek ji we di cihekî ku ti kes lê neyî de tiştekî xwe winda bike, yan jî mecbûr bimîne arîkarîyê bixwaze, bila wiha gazî bike, bibêje: «Ya Îbadellah, eînûnî!»=«Gelî bendeyên Xuda, arî min bikin!». Lewra bendene (hinek bendeyên) Xuda hene, hûn wan nabînin.*”[624]

Hezretê Îmam Newewî yê ku ev hedîsa şerîf guhastiye, bûyereke ku bi serê wî bi xwe de hatiye, wiha bibîr tîne, dibêje:

622. Tirmizî, Deawat, 118; Ahmed bin Henbel, Musned, IV, 138.
623. Hakim, Mustedrek, I, 707-708.
624. Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, X, 132; Îmam Newewî, el-Ezkar, 201.

"Ew zatê ku ev hedîs ji min re guhastî dabû zanîn ku wî bûyereke wekî vê jîyabû û bi mûcibê fermana Resûlûllah de hereket kiribû, encam aynî wisan bicih hatibû. Min jî heyret kiribû. Piştre rojekê, hêştira kesekî ku ez li balê bûm, bazda. Ji lewma min jî ev hedîsa şerîf neqil kir. Me ji nişka ve dît ku wa ye hêştir hîç bêsebeb dev ji bazdanê berdaye û xwediyê wê bi hêsanî hêştira xwe girt."[625]

Li gorî rîwayeta Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Xudê Teala ji bilî melaîketên hefeze hinek melaîketên wî hene ku ji pela ji darê dikeve heta bi her tiştî dinivîsin. Heke yek ji we li çoleke bêkes û bêkûs bi zehmetîyekî ji zehmetîyan re rûbirû bimîne, bila wiha gazî bike, bibêje: «eînûnî îbadellah»= «Gelî bendeyên Xuda, arî min bikin!»*"[626]

Li alîyê din pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî di gellek caran de jê hatiye rîwayetkirin ku wî ev hevok di dûayên xwe de zikr kirine:

"Biheqqî Nebîyyîke welenbîyaîllezîne min qeblî"

"*Bi heqê pêğemberê te û pêğemberên berî min (daxwaza min qebûl bike!).*"[627]

Di hedîseke şerîfa dîgera xwe de Mezinê me Hebîbê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Dema Adem -eleyhisselam- ew zelle'ya ku bûye sebebê deranîna wî ya ji cennetê kiriye, xetaya xwe fehm kir û got:*

*«-Ya Rebbî! Ji bo heqqê Mûhemmed ez ji Te efûya xwe dixwazim.» Ellah Teala jî jê re got:*

*«-Ya Adem! Ew Mûhemmed ê ku min hê ew neaferandiye[628] te ji ku ew zanî?»* Adem -eleyhisselam- jî got:

625. Îmam Newewî, Ezkar, rûp. 201.
626. Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, X, 132.
627. Heysemî, Mecmauz-Zewaîd, IX, 257.
628. Cenabê Heq di ezel de sade ew bi tenê hebû, masîwaya ku xwestibû di sewîya îdraka însanan û cinan de were zanîn, yanî ji bilî xwe her tişt aferandiye. Di vê aferînê de ya pêşî "Nûra Mûhemmedî" ye. Bi vê sedemê Resûlê Xuda gotiye: "Dema Adem hê di navbera rûh û cesed de bû, ez pêğember bûme." (Tirmizî, Menaqib,1). Li gorî vê Nûra Mûhemmedî ku cewhera Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- e, di aferînê de digel ku ya pêşî ye jî, lêbelê li bedenê kirina wê û şandina wî di sîlsîleya

*«-Ya Rebbî! Dema te ez aferandim û te ji rûhê xwe di min de pif kir, min serê xwe rakir, min dît ku li ser sitûnên Erşê Te hevoka "La îlahe îllellah Mûhemmedur-Resûlûllah" nivîsandîye. Min zanî ku Tu sade navê hezkirîtirînê mexlûqatan li ber navê xwe dinivîsî!» Vêca Ellah Teala jê re got:*

*«-Ya Adem! Te rast got. Bi rastî ew ji bo min hezkirîtirînê mexlûqata ye. Bi heqqê wî dûa ji min bike. (Madem te dûa kir), naxwe min jî tu efû kirî. Heke Mûhemmed nebûya, min tu nediaferandî!»*"[629]

Li alîyê din dûa di 'an'aneya Îslamî de bi hemdele û selweleyê destpê dike û dîsa bi wan tê bidawîkirin. Selwele, di bara pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de dûa û nîyazek ji Cenabê Heq e. Ew dûaya (selewata) ji bo Pêğemberê me were kirin bi şûn de nayê vegerandin û di rêya hatin qebûlbûna wê de bawerîyek û qenaetek heye. Ha bi selat û selaman xemilandina destpêk û xilaseka dûayên me jî ji vê rastîyê tê. Bi vî awayî, em bi fikra dabînkirina qebûlbûna dûayên xwe, em dûayên xwe jî dixin navbera du meqbûlan û dûaya ku qebûlbûna wê mûheqqeq e.

Çawa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- zilamek dît ku ew di piştî nimêjê de hê hemd ji Xuda re nekirî û hê selat û selam li ser Pêğemberê Wî nedayîn ji bo xwe dûa kir. Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- got:

"*Vî zilamî acele kir*." Piştre ew zilam ji bo cem xwe bang kir û jê re wiha got:

"*Dema yek ji we dûa bike, pêşî bila ji Xudê Teala re hemd û sena bike, piştre bila selat û selaman li ser Pêğember bide. Paştir jî bila bi awayê ku dixwaze, (ji xwe re) dûa bike.*"[630]

Xwestina însanî ya merama xwe di dûayê de bi tewessulkirina qencên Xuda, ji Xuda, di serî de bi hurmeta pêğemberan, bi hurmeta ewlîyaullah ên ku warisên wan e, bi hurmeta salihên ku li cem Heq wan meqamekî bilind heye, ji bo daxwaza xwe bi wesîlekirina mirovên ku Xudê Teala ji wan hez dike, bi van hestan lavlavkirina ji Xuda û penaha xwe birina ber wî, (bizaveke rast e ku) merhemeta îlahî celb dike û di mûstecab bûna dûayê de yek

pêğemberan de ya dawîtirîn e.. Naxwe bi îfadeya li jorê ne Nûra Mûhemmedî, lêbelê "Zatê Mûhemmedî" bi sifetê beşerî yê ku ew hatî şandin, hatiye qesedkirin..

629. Hakim, Mustedrek, II, 672.
630. Tirmizî, Deawat, 64.

ji mûessirên mûhîm e. Lêbelê dûa, sade ji Xudê Teala tenê tê kirin. **Ji lewma dema mirov di dûa de hezkirîyên Xuda bi wesîle bike, divê mirov ne ji şexsên wan bixwaze, lêbelê divê mirov ji Xudê Teala tenê bixwaze**. Di dûa de zikrkirina zatên ku Cenabê Heq ji wan hez dike, usûleke ji bo qebûlbûna dûaya ku ji Xuda tê kirin, sebebeke ku serî lê tê dayîn.

Ji bilî van tewessula bi zatên salih ên xwedî fezîlet jî, di rastîyê de bi tewessulkirina amelên salihan û mezîyetên bilind ên wan e.. Lewra mertebeya bilinda wan û qîmetên mezin ên wan li cem Heq, bi sebeba van amelên salihan e. Li ser vî esasî, dema Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî serkeftin û arîkarî ji Xuda taleb dikir, bi wesîleya feqîrên mûhaciran nîyaz dikir[631] û wiha digot:

"*Ji min re gazî lawazan bikin. Lewra sade bi (dûa û bereketa) lawazên we, rizqê we te dayîn û arîkarî ji we re tê kirin.*"[632]

Lewra mûheqqeq e, ew dûya ku bi tewessulkirina van însanên salih ên ku li cem civakê wan meqam û serwetek nîn e ku ji bo îtîbarê bibe medar, ewên bejin-tewihayî û dil-şikestî; lêbelê qenaet û rizaya wan bi teqdîrê dilên wan zengîn e, were kirin helbet ji bo qebûlbûnê layiqtir e..

Di bara bi wesîlekirina qelbên şikestî û ğemgîn û wisan wasilbûna ji bo rizaya îlahî de ev rîwayeta Malik bin Dînar pirr manedar e:

"Mûsa -eleyhisselam- di penah-birineke xwe ya ber Cenabê Heq de got:

«-Ya Reb! Ez li kuderê li Te bigerim!» Xudê Teala jê re got:

«-Li cem dil-şikestîyan li min bigere.»" [633]

❁

Li gorî Enes -radîyellahû anhû- rîwayet kiriye; di hişkesalîyeke ku di dewra xîlafeta Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- de çêbûbû de, wî mamê Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- Hezretê Ebbas -radîyellahû anhû-da ber tenişta xwe û ji bo barîna baranê ew di lavlavkirina ji Cenabê Heq de bi wesîle kir û got:

631. Binêrin. Buxarî, Cîhad, 76; Taberanî, Mûcemu'l-Kebîr, I, 292.
632. Ebûdawud, Cîhad, 70; Ahmed b. Henbel, Musned, V, 198.
633. Ebû Nûaym, Hîlye, II, 364.

“Xudayê min! Me Pêğemberê xwe li cem Te bi wesîle dikir, te jî baran dida me. (Vêga jî) Em apê Pêğemberê xwe li cem te bi wesîle dikin. Baranê bide me!” Di piştî vê lavlavê de baran li wan barîye û xelk bi avê gihaye.[634]

Li gorî rîwayeteke din jî Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- got:

“Xudayê min! Ewr jî, av jî ji cem te ne. Ewran bişîne û baranê ji me re peya bike.” Bi nefsbiçûkî û hêstirên çavan bi dûayeke dirêj û hestgerm li ber Xuda gerîyaye. Di piştî vê dûayê de ewrên rahmê gelwaz bi gelwaz berhev bûne û ew gihane barana bereketê. Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- jî li ser vê îkrama îlahî got:

“Gelî mirovan! Wekî ku biçûkek ji bavê xwe hez dike wisan pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî ji apê xwe Ebbas hez dikir, rêz jê re digirt û sûnda wî bi sûnda xwe dijimart. Gelî mirovan! Ev rêz û hurmeta ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di bara apê xwe de şanî dida, hûn jî wê li ber çavan bigrin! Ji bo her cure mûsîbeta ku were serê (di dûayên xwe de) we, wî li cem Xuda bi wesîle bikin!”[635]

Li gorî Îbn-î Ebdi’l-Berr ev rîwayet jî di vê babetê de mahîyeteke rohnîkar erz dike:

Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ji bo baran xwestinê Ebbas jî bi xwe re dibir, derkete ser nimêjgehê û wiha dûa kir:

“Xudayê min! Em bi apê Pêğemberê xwe, xwe ji te nêzîk dikin û em (ji bo xwe) wî (apê pêğemberê xwe) şefaetkar dixwazin. Ji bo Pêğemberê xwe, wî raçav bike! Çawa te ji bo qencî û salihtîya dê-bavên wan du zarokên (sêwî) jî raçav kiribûn[636]. Em hatine cem te lêborîna xwe û (ji bo xwe) şefaetê ji Te dixwazin!”

Piştre Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- berê xwe da mirovan û ev ayeta ha ji wan re xwend:

634. Buxarî, Îstisqa, 3.
635. Hakim, Mustedrek, III, 377.
636. Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- bi vê peyva xwe wê ayetê destnîşan dike, ewa ku ji mûdaxeleya Xizir -eleyhisselam- ya ji bo Mûsa -eleyhîsellam- behs dike:
“**Herçî dîwar bû ev, li wî bajarî yê du zarokên sêwî bûye. Di bin wî de xezîneyeke wan hebû. Bavên wan kesekî salih bûye. Rebbê te xwest ku ew herdu zarokên sêwî bigihin dema reşîdbûna xwe û xezîneya xwe derînin.** (Ev) **merhemetek ji Rebbê min bû. Min ev ji ber xwe ve nekirine. Ha rûyê hundurînê tiştên ku te nikarîbû li ser wan sebr bikî, ev e.**” (Kehf, 18/82).

“**Ji Rebbê xwe meğfîretê bixwazin! Lewra ew zehf efûkar e.** (Meğfîretê bixwazin ku) **baran pirr pirr li ser we bibare, malên we û zarokên we zêde bibin, bexçe ji we re werin îhsankirin û ji bo we kehnî biherikin!**”[637]

Piştre jî Ebbas -radîyellahû anhû- rabû ser pêya û dûa kir. Çavên Ebbas wekî kehnîyê hêstir dibarandin. ( Bi vê wesîleyê piştî Xuda baran ji wan re îhsan kir) xelkê got:

“-Ey avgerê Heremeynê! Em te tebrîk dikin.” Bi vê gotinê, hurmet û giringîpêdan ji Hezretê Ebbas re şanî dan.[638]

Ev bûyer, delîleke tam eşkere ye, nîşan dide ku sehabîyekî bi sehabîyekî din tewessul kiriye. Lêbelê ev hal, ji bo hinek mirovan bûye mijara van îddîayan; tewessula bi kesên salih dema ew li jîyanê bin mûmkin e. Lêbelê di piştî mirina wan de tewessul bi wan nayê kirin. Texsîskirina tewessul-kirinê bi Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo dema berî wefata wî tenê dîtin-nêrînek ji cem xwediyê wan îddîayan e, ku ew heqîqetê nade xuyakirin. Çawa îltîcaya Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ya bi vî awayî: “Ya Rebbî! Me li cem te bi Pêğemberê xwe tewessul dikir, ne sade tewessula bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ya di dema berî wefata wî de ye. Lêbelê ew ji bo piştî wefata wî jî şamil e. Ji xwe tewessula wan bi Hezretê Ebbas -radîyellahû anhû- ne ji bo ew kesekî dî bûye. Lêbelê ji bo ew apê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bûye. Yanî ji ber ku ew lêzimekî Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- bûye, naxwe ew meqamê ku ji bo tewessulê serî lê hatiye dayîn çendan wefat kiribe jî dîsa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi xwe bûye. Aynî wekî vê di bara hinek ewlîyaullah de jî di piştî mirina wan de îmkan û îcaba tewessulê waqîî ye.[639]

Yek ji eşkeretirîn mîsalên vê jî ev e:

Alim û xwedî îhtiyac, diçûn ber qebra Îmamê Ezam ê ku yek ji mezinê Selefên Salihîn e, zîyaret dikirin, bi wî tewessul dikirin û feyda wê jî didîtin. Çawa yek ji wan jî Hezretê Îmam Şafîî bû, ew wiha vedibêje:

637. Nûh, 71/10-12.
638. Îbn-î Ebdi’l-Berr, Îstîab, II, 814-815.
639. Ji bo agahîyên mûfessel di bara vê mijarê de binêrin. Zekerîya Guler, “Nirxê Serkehnîyî yê Hedîsên Wesîle û Tewessulê”, Kovara ÎLAM Ji bo Lêgerînê, c. II, Hijm 1, rûp. 83-132.

"Dema îhtiyaceke min çêdibû min du rekat nimêj dikirin. Piştre ez diçûm ser qebra Ebû Henîfe û min li wir dûa ji Xuda dikir. Bi bereketa wî hemberê îhtiyaca min derhal dihate dayîn."[640]

❁

Li alîyê din amelên salih jî ji bo xilasbûna ji pirsgirêkan wesîle ye. Di hedîsa şerîf de Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-halê sê hevalên ji wan ummetên berê çûne derbas bûne ku pevre derketibûne rêwengîyê wiha dide zanîn:

"*Sê heval di esnaya rêwîtîyê de baran li wan dibare, ji bo şeva xwe derbas bikin, diçin, dikevin şikeftekê. Ji nişka ve perçekekî mezin ji çîyayî dikeve û devê şikeftê digre, asê dike. Vêca ew ji hev re dibêjin:*

*Ji bilî em bi amelên salih ên xwe dûa ji Xuda bikin pê ve me ti çareyek nîn e; ji Xuda pê ve ti kes nikare me ji vir xilas bike.*

*Yek ji wan, îtaeta xwe ya ji dê-bavên xwe re bi wesîle dike. Zinar piçekê ji şûna xwe dileyize, lêbelê ne bi qeder ku ew karibin ji şikeftê derkevin. Yê duduyan, tirsa xwe ya ji Xuda, heya û îffeta xwe bi wesîle dike. Zinar piçeke din jî ji devê wê dileqe, lêbelê dîsa ne bi qeder ku karibin ji şikeftê derkevin. Yê sisêyan jî li ber çavan girtina xwe ya heqê evdan bi wesîle dike û lavlavê ji Xuda dike. Vêca zinar bi temamî ji devê şikeftê dileqe û derdikeve derve.*" [641]

Mûessireke dîgera ku ji bo mûstecabbûn û meqbûlbûna dûayê dibe wesîle jî esmayên îlahî ne.

Bi awayê zehf zikrkirina esmayên/navên îlahî jî di rêya qebûlbûna hinek daxwazên xwe de penah birina ber Cenabê Heq jî rêyeke ferehvana tewessulê ye.

Cenabê Heq di ayeta pîroz de dibêje:

"**Navên sipehîtirîn** (esmau'l-husna) **yê Xuda ne. Naxwe bi van navan ji Wî dûa bikin!**"[642]

Çawa dêya me Hezreta Aîşe -radîyellahû anhû- dide zanîn ku pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha dûa kiriye:

640. El-Heytemî, el-Xeyratu'l-Hîsan, rûp. 94.
641. Binêrin. Buxarî, Edeb 5, Enbîya 53, Zikr 100.
642. E'raf, 7/180.

"*Xudayê min! Ez bi (hurmeta) navê Te yê tahir, teyyîb, mûbarek û li cem Te hezkirîtirîn ji Te dixwazim. Ew navê ku dema pê dûa ji Te were kirin, Tu îcabet dikî, dema pê ji te were xwestin Tu didî, dema pê merhemet ji Te were talebkirin Tu rahmê dikî û ji bo xilasbûna ji tengasîyê bi wî arîkarî ji te were xwestin Tu rêya derketin û ferehîyê didî..*"

Di dewamîya vê hedîsa şerîf de Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- pirs kiriye, jê re gotiye:

"-*Ya Aîşe! Ma tu dizanî Xudê Teala kîjan navê xwe li min hîn kiriye ku dema pê dûa were kirin ewê wê dûayê qebûl bike*?" Dema Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- ji Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- re got:

"-Ya Resûlellah! Bila bavê min û dêya min ji te re bi qurban bin! Wî li min hîn bike!" Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

"-*Ya Aîşe! Divê ew nav li te neyê hînkirin!*" Vêca dêya me Hezreta Aîşe ji wir hinekê bi dûr ket, mûddetekê rûnişt, piştre jî hat serê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- maç kir û jê re got:

"-Ya Resûlellah! Ji kerema xwe wî li min hîn bike!" Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dubare jê re gotiye:

"-*Ya Aîşe! Divê ez wî navî li te hîn nekim. Lewra bi wî navî xwestina te ji bo tiştekî dinyayî (hîç jî) guncaw nabe*!" Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- tişta piştî wê jî kirî wiha vedibêje:

Vêca ez jî rabûm, min desmêj girt û piştî min du rekat nimêj kir, min wiha lavlav ji Cenabê Heq kir:

"-Ya Rebbî! Ez ji te re dibêjim; ya "Ellah" û gazî te dikim, dûa ji te dikim. Ez ji te re dibêjim; ya «er-Rahman», ya «el-Berr» û ya «er-Rahîm» gazî te dikim. Ez bi hemû esmayên husna yên ku dizanim û yên ku nizanim gazî te dikim. Ez dûa ji te dikim ji bo tu min efû bikî û li min werî rahmê!"

Dêya me Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- di berdewamîya peyvên xwe de wiha dibêje:

"Dema min ev gotin, pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- kenî û wiha got:

«-Bêşiwar ew nav, di nav wan navan de bû ku te bi wan dûa kir!»”[643]

Enes bin Malik -radîyellahû anhû- jî hedîseke wiha rîwayet dike, dibêje: Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji zilamekî bihîst ku wî bi vî awayî dûa dikir, wiha digot:

“*Xudayê min! Ez ji Te dixwazim «Hemd ji Te re taybet e. Ji Te pê ve ti îlah nîn in. Te tek î, te şirîk nîn in. Tu zehf nîmetbexş î (Mennan î). Tu aferînerê asîmanan û erdê yî (Bedîî). Tu xwedî celal û îkram î!*» Vêca Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- got:

“*-Wellahî vî zilamî, bi îsmê ezam ê Xuda, xwest. Ew navê ku dema bi wî tê xwestin Xudê Teala dide û dema bi wî dûa tê kirin, îcabet dike.*”[644]

Wekî ku ji van hedîsan û yên wekî wan tê fehmkirin, bi esmayên husna jî tewessulkirin ji sunneta senîyye’ya Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye.

❁

Hinek aliman gotine; ji hêla naverokê ve di navbera van lefzan “twessul, îstîane, îstîğase, îstîşfa, teşeff‘û, teweccuh û teberrukê” de ku bi giştî wek navlêkên tesewwufî têne gotin de hîç ti ferqek nîn e.[645]

Ev kelîme bi maneya arîkarî-xwestinê tên, gerek di hizûra wan de be, gerek jî di ğîyaba wan de be himmet talebkirina ji dostên Heq ên xwedî selahîyeta teserrufatîyê îfade dikin. “Himmet taleb kirin” ji zatên salih ên ku tê bawerkirin ew ji hêla maneyî ve di dereceya bilind de ne, maneya wê di rêya wasilbûna meqsûdê de ji wan xwestine ku ew bibin wesîle ne. Ev jî bi dûa, teweccuh, elaqeya nêzîk û peywendîyên wan bicih tê.

Peyva himmetê, bi pirranî di bara arîkarîya bendeyên welî de tê bikaranîn. Bi peyvên wekî “nusret” û “tewfîq”ê ji arîkarîya Xuda tê behskirin.

Di esasê de yê ku arîkarîyê bike Ellah Teala tenê ye. Wergirtina tewessulê di dûayên ku ji Xudê Teala têne kirin de wekî ku ew ji bilî Xudê Teala arîkarî ji yekî din tê xwestin, ne rast e. Lewra di tewessulê de ew zatê ku însan berê xwe didiyê bes Heq Teala tenê ye.

643. Îbn-î Mace, Dûa, 9.
644. Îbn-î Mace, Dûa, 9; Nesaî, Sehw, 58.
645. Binêrin. Şîfau’s-Seqem Fî Zîyaretî Xeyri’l-Enam, rûp. 133-134.

Çawa Xudê Teala di ayetên pîroz de dibêje:

وَمَا النَّصْرُ إِلاَّ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ.

“**..Arîkarî** (nusret) **sade û sade ji cem Xuda ye**...” [646]

“**Heke Xuda arî we bike, êdî ti kes nikare we têkbibe. Heke ew we bêarîkarî bihêle, êdî di piştî wî de kî wê arîkarîya we bike? Bila mûmîn sade bawerîya xwe bi Xuda bînin û pişta xwe bispêrin wî**.”[647]

Ebdûllah îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- vedibêje:

Rojekê ez li pişt Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bûm. Wî ji min re wiha got:

“*Kurê min! Ezê çend peyvan ji te re bibêjim. (ferman û qedeğeyên) Xuda li ber çavan bigre ku Xuda jî te li ber çavan bigre û biparêze. (Rizaya) Xuda di her tiştî de li pêş bigre ku tu Xuda li pêşîya xwe bibînî. Heke tu yê tiştekî bixwazî, wî ji Xuda bixwaze! Û zanibe ku heke hemû însan kom bibin û kar bikin ji bo feydekekê bidin te, ew bes dikarin wê feyda ku Xuda ji te re teqdîr kiriye, temîn bikin. Dîsa heke hemû însan kom bibin, rabin ji bo zirarekê bigihînin te, ew bes dikarin wê zirara ku Xuda di bara te de teqdîr kiriye, bigihînin te*..”[648]

Mûmîn hemû, çawa vê heqîqetê qebûl dikin, aynî wisan ew di her rekata nimêja xwe de di vê ayeta sûretê Fatîhê de jî wê tim iqrar dikin:

إِيَّاكَ نَعْبُدُ وَإِيَّاكَ نَسْتَعِينُ.

“(Rebbê me!) **Em evdînîyê bes ji te re dikin û em arîkarîyê sade ji te dixwazin.**”[649]

Çawa di Cenga Bedrê de li ser wê arîkarîya îlahî ya ku li hemberî dijminan hatî jîyîn de Cenabê Heq di ayeta pîroz de ji Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- re gotiye:

“**Dema te avêtî ne te avêt, lêbelê Xuda avêt**..”[650] Yanî her cure arîkarî û lutfên manewî yên ku hatine jîyîn di wan de failê rastî û mûtleq, sade Ellah Teala ye.

646. Enfal, 8/10.
647. Alî Îmran, 3/160.
648. Tirmizî, Qiyamet, 59.
649. Fatîha, 1/5.
650. Enfal, 8/17.

Ew dûayên xalîsane ku hinek mûmîn -bêyî şirk û kufr di wan de hebe- bi arzûya nêzîkbûna ji Xuda, dikin, umîdkirina wan ji bo arîkarîya manewî ya salihan, bi yadkirina wan hêvîkirina peyabûna wê, mahîyeta hêvîkirina ji wê rahmê ku were peyakirin bi xwe re hildigre. Ev, ji bo hasilbûna feyz û bereketa keş û hewaya cureyeka manewî ye. Her tişt bes û bes bi xwestina Xuda çêdibe. Ji xwe ew zatê ku bi wesîleya wî bi xwe îstîğase tê kirin, ne failê mûtleq e û di rastîyê de yê ku arîkarîyê dike sade Ellah Teala ye.

Ev peyvên hinek însanan çi di ğîyaba salihan de be, çi jî di esnaya serdana qebrên wan de be ku dibêjin; "ya filan zat! Şîfayê bide min! Vê îhtiyaca min temîn bike!"yekser xwestina arîkarîyê ji wan heta tu bibêjî bes şaş e û ew ji wan îstîğaseyan e ku dikare rê li ber şirkê veke. Hîç guman nîn e ku ji bo van cure îstîğaseyan jî heke çi qeder hinek te'wîl werin kirin jî dîsa divê însan xwe bi tundî ji van û bizavên wekî wan cahilane biparêze ku ew dikarin wê eqîda tewhîdê ya ğayet hessas xirab bikin. Ev cure îfadeyên ku di berterefkirina pirsgirêkan de û di sewq û îdarekirina kaînatê de wan întîbayan didin ku dibe ji bilî Xuda jî hinek xwediyê teserrufatîya mûtleq hebin, ha divê ev bi ti awayan neyên bikaranîn.[651]

651. Ewên ku dibêjin, mirov dikare van îfadeyan bikarbîne, gotine; ev peyv ji cureyên "mecaza aqilî" yên di îlmê belağetê de ne. Mecaza aqilî, maneya wê xwe nasipêre fiêla failê rastî û mûessirê wê. Lêbelê ew xwe dispêre tiştekî ku elaqeya wan bi mekan, zeman û sebebê wî failî ve heye. Li gorî vê hunera edebî, mesela di vê ayetê de "**Dema erd giranîyan derîne derve.**" (Zîlzal, 99/2) digel ku yê wan giranîyan derdixe derve Xuda ye, lêbelê têde failê heqîqî Xuda nehatiye zikrkirin tenê mekanê fiêlê hatiye zikrkirin, lêbelê meqsûd jê helbet Xuda ye.
Ha sofî jî wî zatê ku îstîğasê jê dikin ne failê heqîqî ye, lêbelê ew bawer dikin ku di heqîqetê de yê arîkarîyê dike Xuda ye, û dibêjin; ji xwe em daxwazên xwe ji wî dikin. (Di rewşeke berevajî de ew jî qebûl dikin ku ev şirkeke eşkere ye.)
**Mûhemmed Ebû Zehra** di vê babetê de wiha dibêje:
"Peyvên ewaman û mislimanên cahil, bi yê nêzîktirîn tê te'wîlkirin.. Ne astengkirina zîyaretkirina wan ji bo qebra Resûlê Ekrem e, lêbelê îrşadkirina wan sipehî dibe. Ne tekfîrkirina wan yan jî bi mûşrik jimartina wan, lêbelê ji bo wan vegotin û hînkirin mûnasib dibe. Hîç şubhe nîn e ku Ellah Teala wê tewhîdê heta bi qiyametê mûhafeze bike. Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- di dawîya temenê xwe de daye zanîn ku şeytan hêvîya xwe jê qut kiriye ku di beldeyî (welatî) de îbadet jê re were kirin û mizgînî daye mûmînan. Naxwe, êdî divê Îbn-î Teymîyye ji tewhîdê endîşe neke." (Ebû Zehra, Îbnu Teymîyye, rûp. 326).
Di edebîyeta dînî de bi wesîleyên curecur ew gazîyên "meded ya Resûlellah!" ku dem bi dem têne dubare kirin jî bi maneya bi hêvîya şefaeta Resûlê Ekrem ya li axretê mûraceatkirina ji bo wî ye. Naxwe bi çavê şirkê meyzandina hinek mirovan li vê jî ne di cih de ye. Lewra her mûmîn, ji xwe di pêşîya pêşîn de bawer dike ku

> “Ew hurmeta ku ji bo bîranên ezîz ên Resûlê Xuda têne şanîdan, ji eşq û mehebbeta wî ne û mehsûla peywendîya dilî ya bi wî ve ye.”

## B. TEBERRUK

Teberruk, di esasê xwe de bi maneya bereket xwestinê ye. Ew gihiştina bereket û feyzê ya bi wasîteya tiştekî, îfade dike.

### Bi Jibermaya Xurekê Teberruk kirin

Ewlîyaullah dema xwarinê dixwin, jibermaya xwarina xwe û firdika ku ji berê mayî dixwin û vedixwin, ev jî yek ji wan wasîteyan e ku ji bo teserrufatî-kirina di rûh de serî lê tê dayîn. Ev çawanî û keyfîyet jî wekî ku hinek zen dikin, ne bêmesned û bed‘at e. Lewra ji bo vê di heyata Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de gellek caran bicih hatiye û di bara vê de di kitêbên hedîs û sîyerê de mîsalên curecur hene.

Di zeman û mekanên curecur de bi taybetî di Sefera Hudeybîyê de sehabîyan jiberemaya mûbareka xureka pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bereket dîtine.

Hezretê Cabir -radiyellahû anhû- wiha vedibêje:

“Roja Hudeybîyê însan tî bûn û hatin cem Mezinê me. Li pêş pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- meterekî avê yê çermî hebû. Mezinê me desmêj girt. Xelk ber bi wî ve hatin. Vêca Wî ji wan pirs kir, ji wan re got:

«-Çi yê we heye?» Wan jê re got:

«Hem ji bo desmêjgirtinê hem jî ji bo vexwarinê ji ava li pêş we pê ve ava me nemaye.»

Resûlê Xuda derhal destê xwe kire nav meterê avê. Ji nişka ve avê destpê kir, ji navbera telîyên wî herikî. Ew aynî wekî kela kehnîyan bû. Me tevan ji wê vexwar û jê desmêj girt.”

---

şefaeta Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem- jî sirf bi xwestina Cenabê Heq tenê bicih tê.

Ji Hezretê Cabir hate pirsîn;

“-Ew roj hûn çend kes bûn?” Wî ev bersiv da:

“-Heke em sed hezar kes bûne jî wê avê têra me dikir. Lêbelê em, hezar û pênsed kes bûn!”[652]

Ev ava ku ji pêçîya/telîya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- diherikî hîç şubhe nîn e ku ji zemzemê jî bi şîfatir û çêtir e. Lewra ew ji destên nûrdar ên Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û ji cismê şerîf ê wî herikîye.

Li gorî daxuyanîya hinek hedîsan dema Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- şîrek vedixwar, jiberemaya firağa ku şîr têde vexwaribû, ji sehabîyên din re îkram dikir, hem ew ji bo yê ku vedixwar dibû guhastina feyzê, hem jî di şîr de bi bereketbûnek dihate meydanê û ew hîç kêm nedibû..

Sehl bin Se‘d -radîyellahû anhû- wiha rîwayet dike, dibêje:

Vexwarinek ji bo Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hatibû anîn. Wî, miqdarek ji wî vexwar. Di vê navê de li rexê rastê wî zarokek hebû, li rexê çepê wî jî ji mezinên sehabîyan jî kesên yextiyar rûdiniştin. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo wî zarokê li rexê rastê xwe -bi ziravî û nezaketeke ku kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê- got:

“*-Destûra te heye ez vê vexwarinê pêşî bidim van mezinan?*”

Wî zarokê aqilmend ev bersiva mezin da ku wê herkes hişte şaş û heq dike ji alemê re bibe îbret:

“-Ya Resûlellah! Ez nesîbê xwe yê ji îkrama te, nadim ti kesî!”

Vêca Pêğemberê hezkirî yê me -sellellahû eleyhî we sellem- ew vexwarina di destên mûbarek ên xwe de da wî zarokî.[653]

Esma bintî Ebûbekr wiha vedibêje:

“Dema ez bi (kurê xwe) Ebdûllah bin Zubeyr bi helme bûm, min ji bo cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hicret kiribû. Ez giham

652. Buxarî, Menaqib, 25.
653. Buxarî, Eşrîbe, 19.

Medînê û me koça xwe li Qubayê danî. Ebdûllah li wir jidayîk bû. Piştre ez hatim cem Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-. Wî ew danî ser kaba xwe û xurmeyek xwest. Wî piştî xurme piçekî di devê xwe de perçiqand, perçekek ji wê xiste devê Ebdûllah. Ha yekem parîyê ku kete mîda Ebdûllah jî ev bû. Wî jê re dûa kir û jê re ji Xuda bereket taleb kir." [654]

Di wan rojên ku Ebû Eyyûb el-Ensarî Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li mala xwe bi mêhvan dikir de wî xwarin dipijand û ew ji Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- re dişand. Dema beşa mayî ya xwarinê bi şûn de dihat vegerandin, wî ew cihên ku telîyên Mezinê Aleman gihanê dipirsî û lêgerîn li wan dikir.[655]

Hezretê Cabir -radîyellahû anhû- jî bîranîneke xwe di wan zemanên zor de di berî cenga Xendeqê de dema ew xendeqên mezin dihatin kolan wiha diguhêze, neqil dike:

Dema me xendeq dikolan, em li zinarekî zehf dijwar rast hatin. Sehabîyên wî, hatin cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û dema rewş li wî erz kirin, Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- bizzat xwe berda nav xendeqê. Rahişt axkolk (qazma) û li wî zinarî da, ew wekî ku sêlh û qûm be, ji hev belav bû. Dema ev tecellîya mûcîzewî hate meydanê, me dît ku wa ye pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji birçîyan kevirek li ser zikê xwe girêdaye. Lewra ji wan sê rojên ku em li wir mabûn ve wî hîç tiştek nexwaribû. Vêca min jê re got:

"-Ya Resûlellah! Destûra min bidin, ezê heta bi malê herim." Wî jî destûr da min. Ez çûme malê û min ji hevjîna xwe re got:

"-Ez nikarim xwe li ber halê Resûlê Ekrem bigrim. Ma tiştekî xwarinê li mala me nîn e? Hevjîna min ji min re got:

"-Hinek ceh û kehrek heye."

Min kehr serjê kir, hevjîna min jî ceh hêrd û bi nan kir. Me goştê kêhr jî xiste beroşê. Dema nan dikir bipije û beroş jî li ser tifikê dikelî, ez çûme cem Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, min tika/rica jê kir û jê re got:

654. Binêrin. Buxarî, Eqîqe, 1.
655. Mûslim, Eşrîbe, 170-171.

“-Piçek xwarina me heye. Hûn digel kesek du kesan kerem bikin, werin.”

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji min pirs kir, ji min re got:

“Çi qeder xwarina we heye?” Min jî miqdarê heyî jê re got. Wî jî got:

“-Hem zehf e, hem jî baş e! Li hevjîna xwe tenbih bike; heta em neyên, bila ew beroşê ji ser êgir nedeyne û bila nan jî ji firinê nederîne.” Wî ji eshabê xwe re jî got; “rabin!” Vêca mûhacir û Ensarî tev bi hev re rabûn.

Ez jî çûm cem hevjîna xwe û min (endîşe dikir ku xwarina me hindik e, ewê ji bo tevan têrê neke, ez şaşomaşobûneke biçûk dijîyam. Min ji hevjîna xwe re) got:

“-Ha wa ye pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, digel mûhacir, ensarî û yên ku gihane wan tev de tên.”

Hevjîna min ji min re got:

“-Ma pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nepirsî ka hazirîya me çi qeder e?”

Min jê re got:

“-Belê, pirs kir.”

Wê ji min re got:

“-Naxwe rehet be.”

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji mirovên digel xwe re got:

“-Herin hundur, cih li hev teng nekin.” Wî nan dibirrî, goşt li serê didanî, ava goşt jî bi ser de dirijand. Paşê sehabîyan tevan têr xwar. Hinek ji xwarinê zêde jî ma. Mezinê me Pêğember ji malbata min re got:

“-*Tu jî vê bixwe û ji bo cîranên xwe îkram bike. Lewra birçîtîyê hawîrdor daye ber xwe.*”[656]

❁

656. Buxarî, Meğazî, 29; Mûslim, Eşrîbe, 141.

Rîwayeteke din jî wiha ye:

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- (di vegera ji sefera Taîfê de) li cihê bi navê Cî'rane'yê navbera Mekke û Medînê bû.. Meterekî tije av jê re hate anîn, wî hinek jê bikar anîbû, ew meter da Ebûmûsa el-Eş'erî û Bîlal -radîyellahû anhûma- û ji wan re got:

"*-Ji vê avê bixwin û bi ser rûyên xwe û singên xwe de jî birijînin! Ez mizgînîyê didim we!*" Ebûmûsa û Bîlal -radîyellahû anhûma- jî rahiştin wî meterê avê û wekî ku pêğemberê Xuda ji wan re gotî, kirin. Dêya me Ummû Seleme'ya hevjîna Resûlûllah ji pişt perdê ve ji wan re bang dikir, digot:

"-Kurên min, hinekî ji wê avê ji dêya xwe (min) re jî îkram bikin!" Wan jî miqdarek ji wê avê ji dêya me Ummû Seleme re jî îkram kirin.[657]

## Teberruk-Kirina bi Tiştan

Heqîqeteke pêzan e; ew tişta ku wî zatê hezkirî di bîra mirovî tîne, hezker jî wî zatî difikire, di bin bandora wî de dimîne û peywendîya xwe bi wî re xurt dike. Ev îcaba taybetmendîyekê ye ku di tebîatê însanî de heye. Lêbelê ev rastîyeke tarîxî ye ku zêdegavîya di van hiss û helwestan de dikare heta bi pûtperestîyê jî here.[658]

Li alîyê din temayuleke beşerî û tebîî ye, şexsekî ku zehf tê hezkirin, ji wan tiştên ku wî di bîr tînin jî hez dike. Ya giring mirov van bi dereceyeke zêdegavane bipêşve nebe. Bi rastî mefhûmên mûcerred, li ser heyberên mûşexxes wek hal û keyfîyet xuya dibin.

657. Buxarî, Meğazî, 56.
658. Çawa di tarîxa olan de jê re "**fetîşîzm**" tê gotin û perestina wan tiştên ku ji qehremanên mirî yên millî mayî ye û nîşana ulûhîyetê didin wan, ev jirêderketineke tarîxî ye ku ji derbasbûna hiss û temayulên beşerî ya ji tixûbên siriştîbûnê welidîye. Lewra fehmkirina mefhûmên mûcerred zehf zor e. Ji ber zorbûnîyê ye ku ew Aferînerê ku hebûnekî mûcerred e jî hinek mirov ketine wê rê ku di heyberên maddî de bi mûşexxes dikin û wisan qebûl dikin. Pûtperestî ji vê lawazîya beşerî welidîye. Lêbelê ji bo her heqîqetên mûcerred di mûşexxesan de jî tecellîyeke manewî ya wan heye. Ji bo ehlê mûhakemeya selîm ya rast, ji bo ji eserê guhastin û gihana ji bo mûessirî ye, mirov karibe ji bo rastîyên mûcerred xuyahîyên wan, nexşên wan û tecellîyên wan di heyberên fîzîkî de fehm bike. Xuda jî wiha tê zanîn, rûh jî wiha tê zanîn.. Ji bo mehfûmên mûcerred ên din jî rewş aynî ye.

Tecellîya hal û keyfîyetan di tiştan de di Qur'ana Pîroz de zindîtirîn mîsala wê ya ku tê zikrkirin ev e:

Dema gomlekê Yûsuf -eleyhisselam- ji Misrê hatibû bi rê xistin ji bo wî ji Yaqûb -eleyhisselam- re bibin. Hingê Yaqûb -eleyhisselam- li welatê Kenanîyan bû, bêhna wî kiribû. Dema wî ew gomlek bi çavên kor ên xwe ve hekandibû, çavên wî dîderewşen bûbûn û destpê kiribû, êdî rohnî dîtibû.[659]

Ev tesîra ku bi tiştan bicih hatiye jî yek ji wan wasîteyan e ku mûrşidê kamil wê bikartîne ji bo salikê xwe di qiwameke diyarkirî de bigre. Lewra hevhalbûna bi van eks û şanîderîyan, peywendîyê xurt dike. Ev di heman demê de îfadeyeke sunneta hedîye pev-danê ye.

Dema Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bi sehabîyên xwe re li taxa Benî Se'îde bû, ji Sehl bin Se'd -radîyellahû anhû- re got:

"-Ya Sehl, ji kerema xwe avê bidin me?" Vêca wî qedehek av ji wan re îkram kir.

Sehl, di dirêjahîya temenê xwe de divê ev qedeh veşartibe ku Ebû Hazim -radîyellahû anhû- wiha vedibêje:

"Sehl ev qedeh deranî, ji me re şanî da, me jî av jê vexwar. Piştre Ûmer bin Ebdûlezîz ji Sehl rica kir ku ew vê qedeha mûbarek bide wî. Wî jî ew jê re bi hedîye kir."[660]

❁

Sehl bin Se'd -radîyellahû anhû- vedibêje:

Jinekê xirqeyek ji Mezinê me Pêğember re anî. Wê jê re got:

"-Ya Resûlellah! Ez dixwazim vê ji te re hedîye bikim." Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî ew hedîya wê qebûl kir û ew li xwe kir.

Yekî ji sehabîyên wî jê re got:

"-Ya Resûlellah, ev çi cilekî xweşik e, ma tu wê bi hedîye nadî min?"

659. Binêrin. Sûretê Yûsuf, 12/93-96.
660. Buxarî, Eşrîbe, 30.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got; “dibe.” û ew xirqe derhal da wî. Piştî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wir veqetîya, çû, eshabê kîram, li erza wî zilamî dan û jê re wiha gotin:

“-Te tiştekî hîç jî baş nekir. Ji ber ku îhtiyaca Pêğemberê Xuda pê hebû ew standibû. Te jî ew ji wî xwest. Tu dizanî ku Mezinê me ji alemê re rahm e, dema tiştek jê tê xwestin, ew hîç bi şûn de navegerîne.”

Vêca wî zilamî ji wan re got:

“-Ji ber ku Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- ew li xwe kiribû, min xwest bi wî teberruk bikim. Min hêvî heye ku ew ji bo min bibe kefen.”[661]

❁

Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- vedibêje:

“Li Mekkê ji bo Qureyşîyan tiştekî ji razana li ser text xweştir nebû. Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hate Medînê û li mala Ebû Eyyûb peya bû, ji Ebû Eyyûb pirs kir, jê re got:

“-Ya Ebû Eyyûb! Ma we textek nîn e?”

Ebû Eyyûb -radîyellahû anhû- jî jê re got:

“-Nîn e, wellahî.”

Dema Es‘ed bin Zurare yê ensarî xebera vê wergirt, textek ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re şand, stûnên wî ji dara bi navê sacê hatibûne çêkirin, li serê bi lîf û tayên ketenî hatibû hûnandin û ew bi hesîrê jî hatibû kiraskirin.

Heta pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- çû li mala xwe bicih bû jî li ser wî îstîrahet kiribû. Dema ew çû mala xwe jî û heta bi wefata xwe jî her ew text bikaranîbû. Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wefat kir, li ser vî textî hate danîn, li serê hate şûştin, li serê kefen hate lê kirin û nimêja cenazayê wî jî hate kirin.

661. Buxarî, Edeb, 39.

Gel ji bo guhastina mirîyên xwe li serê ew ji me dixwestin û xwe bi wî teberruk dikirin. Cenazeyên Hezretên Ebûbekr û Ûmer jî li ser wî hatin guhastin.[662]

❁

Bûyereke lêçûya dîgera vê jî wiha ye:

Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- ji her sehabîyekî dî zehftir hedîs rîwayet kirine, ew tim li cem Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dibû, her hal û hereketên wî taqîb dikirin. Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- rojekê derdê xwe ji Mezinê me Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- re wiha gotin:

"-Ya Resûlellah! Ez gellek hedîsan ji we dibihîzim lêbelê ez neşêm gellek ji wan di hafîza'ya xwe de bigrim."

Vêca Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji Ebûhûreyre re got:

"Ebayê xwe li ser erdê raêxe!" Wî jî ebayê xwe li ser erdê raêxist.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re dûa kir û bi destên mûbarek ên xwe tiştek xiste çenga xwe, kir her wekî ku wî bavêje nav ebayî. Dûvre jî jê re got:

"*Ebayê xwe kom bike*."

Dema Ebûhûreyre -radîyellahû anhû- ev fermana wî bicih anî, Ellah Teala ji wî re hafîzayeke wisan xurt îhsan kir, êdî ew bû ku wî çi dibihîst nema jibîr dikir.[663]

❁

Bi navê Fîras sehabîyek hebû. Wî jî dixwest tiştekî Mezinê me Pêğember jê re bimîne, bibe ya wî. Rojekê dema ew hate cem Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- dît ku wa ye ew ji firağekê xwarinê dixwe û jê hêvî û rica kir ku ew wê firağê ji wî re bi hedîye bike. Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- daxwaza ti kesî bi şûn de nedivegerand, ew firağ ji wî re bi hedîye kir.

Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- dem bi dem diçû mala Fîras û jê re digot:

662. Belazûrî, Ensabu'l-Eşraf, I, 525.
663. Tirmizî, Menaqib, 46.

"-De ka wê firağa mûbarek bîne." Wî ew firağa ku destên mûbarek ên Mezinê me Hebîbûllah gihabûyê ji zemzemê tije dikir û têr av jê vedixwar; ava ku jê zêde dima jî bi ser rûyê xwe de direşand.[664]

❁

Ebû Cuheyfe -radîyellahû anhû- vedibêje:

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di germa nîvroyê de derket Bethayê. Wî nimêja nîvro û esrê wek du rekat du rekat kirin. Li pêşîya wî rimeke kurt hebû.. Min di wê navê de meyzand ku însan rabûne ser xwe, destên mûbarek ên Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- digirtin û ew bi rûyên xwe ve dihekandin. Min jî destekî wî girt û min ew destê mûbarek bi ser rûyê xwe de hekand. Vêca ma ez çi bibînim, min dît ku destê mûbarekê wî ji berfê sartir û ji miskê bêhnxweştir bûye.[665]

Enes bin Malik -radîyellahû anhû- dema heca Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- bibîr dianî, di bara ka eshabê kîram çawa di xwe teberrukkirina bi pora Mezinê me Resûlûllah bi hev re pêşbazî dikirin de wiha dide zanîn:

Piştî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- kevir barandina li şeytanî temam kir, qurbana xwe serjê kir û tiraş bû. Berber bi pora wî ya di rexê rastê de girt û ew tiraş kir. Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- Ebû Telha bang kir û ev pora dane wî. Piştre berber bi pora li rexê çepê girt. Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got; "bibirre." Wî jî ew birrî. Wî ev jî dane Ebû Telha û jê re got:

"-*Van di navbera mirovan de parve bike*." [666]

Enes bin Malik -radîyellahû anhû- vedibêje:

Min Mezinê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dît berberê wî jî ew tiraş dikir. Eshabê wî jî adeta li hawîrdora wî bûbûne perperîk. Ji bo mûyekî tenê ji pora wî nekeve erdê jî wan dixwest misoger ew bikeve destê yekî ji wan.[667]

Çawa eshabê kîram, hem bi tiştên Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, hem jî bi mûyên mûbarekên por û riha wî halê teberrukê dîjîyan. Eshabê kîram heta di cengan de jî ev heyecana teberrukê bi xwe re hilgirtine. Yek ji sipehîtirîna van mîsalan jî Xalid bin Welîd -radîyellahû

664. Îbn-î Hecer, el-Îsabe, III, 202.
665. Buxarî, Menaqib, 23.
666. Mûslim, Hecc, 326.
667. Mûslim, Fezaîl, 75.

anhû- e ku wî çend mûyên mûbarek ji pora Hezretê Pêğember di şaşika xwe de veşartibûn. Li gorî rîwayetê, dema pora di enîya Mezinê me Pêğember de hatin birrîn, Xalid bin Welîd -radîyellahû anhû- lavlav jê kir, jê re got:

“-Ya Resûlellah! Pora ji enîya xwe bide min! Di vê babetê de ti kesî li ser min tercîh neke! Bila dê-bavên min ji te re bi qurban bin!”[668]

Dema por jê re hate dayîn, ew bi çavên xwe hekandin û ew di pêşîya şaşika xwe de bicih kirin. Bi vî awayî, hîç ti civakek nîn e ku ew di cengê de bi wan re rûbirû hatibe û ew meğlûb nekiribin. Çawa Xalid -radîyellahû anhû- gotiye:

“-Min berê wê bi kîjan alî ve dabe ew dever her dihate fetihkirin.”[669],[670]

---

668. Di vê navê de Hezretê Ebûbekr -radîyellahû anhû- ew tiştên ku Xalid -radîyellahû anhû- li Uhud, Xendeq û Hudeybîyê kiribûn, difikirî û li halê wî yê di wê gavê de dimeyzand û ew di nav heyretan de dima. (Îbn-î Se‘d, II, 174).

669. Nimûneyeke zindî ji bo xwe teberrukkirina bi por û riha Pêğemberê Xuda Hikmet Atan Bey wiha vegotiye: “Min di sala 1983’êyan de ev bûyer ji ‘Elî Yucel Efendî yê Oflu guhdarî kiribû:
Min li Mizgefta Navendî ya Sûlûovayê îmam-xetîbtî dikir. Îmam Efendîyek ji gundên derdorê hate dev min û ji min re got:
«-Xocayê min, weqaetek di serê min re derbas bû, min ti maneyek lê neda.» û wî wiha vegot:
«-Rojekê, ji gundekî ji gundê ku min îmamtî lê dikir nêzîk hinek kes bi daweke tije kitêb hatin cem min û ji min re gotin:
“-Xocayê me, bavê me wefat kir. Kitêbên wî ji me re man. Lêbelê em jî neşên van kitêban bixwînin. Tu xoca yî, bes tu dikarî ji van kitêban îstîfade bikî, em van kitêban ji te re bi hedîye dikin.”
Min jî rahişt wan kitêban, piştî min oğira wan bi xêr kir, tifik xweş pêketibû, ez çûme ber serê wê û min dest bi hûrkolînkirina li ser kitêban kir. Ji navbera wan nameyên Xoca Efendîyê wefatkirî û zarf derketin. Ji ber ku ew nameyên taybetî bûn min ew tev berhev kirin û min ew tev avêtin nav tifikê. Ew tifika agir geş û gur ji nişka ve “tiss” got û mevirî. Ez ketim dehşetê û ez bitirs ji malê derketim derve. Piştre jî ez bes bi saw û tirs hatim malê.»
‘Elî Efendî berdewam dike:
Min jî ji wî Xoca Efendî re got:
«-Di nav wan zarfan de riha şerîf hebû.» Piştî mûddetekê dema ez li wî Îmam Efendî rast hatim wî ji min re got:
«-Xocayê min, te ji ku zanî ku di nav wan zarfan de riha şerîf heye? Ew kesên ku kitêb ji min re hedîye kiribûn hatin cem min û ji min re gotin:
“-Xocayê me, me nezanîye ku di navbera kitêbên bavê me de di nav zarfan de riha şerîf hebûye, wê bide me?» Min jî ew gava dehşetdar ji wan re guhast.”

670. Waqidî, III, 1108; Îbn-î Esîr, Usdu’l-Ğabe, II, 111.

Dîsa Xalid -radîyellahû anhû- di Cenga Yermûkê de ev şaşika xwe winda kiribûye. Wî ferman li serbazên xwe kir ku şaşika wî jê re bibînin. Lêbelê digel ku ew lê gerîyan jî dîsa nedîtin. Hezretê Xalid dubare ferman li wan kir ku ew her divê wê bibînin. Di dawîyê de ew şaşik dîtin. Lê meyzandin ku ew şaşikeke ğayet kevin bûye. Sehabîyan heyret kirin ka Xalid -radîyellahû anhû- ji bo vê şaşika kevin ev qeder çima israr kiriye. Vêca Xalid -radîyellahû anhû- ji wan re wiha got:

"-Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pora xwe kur kiribû. Sehabe ji bo wê porê bi hev ketibûn. Min jî çend mû ji pora wî wergirtin û min ew xistibûn nav vê şaşikê. Ev ji bo min bû bereketeke wisan ku ez bi wê çûbûme kîjan cengê, ew bi serkeftinê bi encam bû. Sirra serkeftinên min, ji hezkirina min ya ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye."[671]

❁

Ev weqaetên ku li ber çavên sehabîyan çêbûne, delîleke din e, şanî didin ku manewîyat û hestan heta ji bo maddeyê jî sîrayet kirine. Naxwe ya giring, mirov bibe xwedî ew dil ku karibe ji heddê layiq nebûre û ji wan xuyahî û în'îkasan feyzê wergire.

Di piştî eshabê kîram de selefê salihîn -Xuda ji wan razî be- jî bi teberrukê re elaqedar ev cure tetbîqat, di serdemên xwe de her dane berdewamkirin. Ji wan weqaetan çend mîsal û nimûne wiha ne:

Îbn-î Sîrîn wiha vedibêje:

"Min ji Abîde"yê re got: «Li cem me hinek ji pora pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- heye. Me ew ji dêya Enes, yan jî ji ehlê wî temîn kiribû.»

Wî bi kelecaneke mezin ev bersiv da:

«Wellahî peydabûna mûyekî tenê ji pora wî, ji bo min ji dinyayê û ji tiştên li dinyayê jî hezkirîtir û bi qîmettir e.»" [672]

Ebdûllah ê kurê Ahmed bin Henbel wiha vedibêje:

671. Heysemî, Mecmau'z-Zewaîd, IX, 349.
672. Buxarî, Wudû, 33.

"Bavê min, mûyekî ji pora pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- werdigre, ew didanî ser lêva xwe û maç dikir, carina jî ew didanî ser çavê xwe.

Bavê min, mûyên ji pora pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-di nav avê de noq dikirin û wî ew vedixwar. Wî bi (teberruka) vê avê şîfa ji Xuda arzû dikir.

Rojekê wî rahişte kaseya avê ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, ew di nav satilekê de şûşt û ji wê avê vexwar.

Dîsa bavê min, bi nîyeta şîfayê ji ava zemzemê vedixwar, ew bi destên xwe û çavên xwe ve dihekand."[673]

Ebdûllah, ji bavê xwe Ahmed bin Henbel; destê xwe (ji bo teberrukê) pê hekandina bi kopalê minbera Mezinê me Pêğember (ku dema Mezinê me xutbe dixwend destê xwe li ser wî didanî) û Hucre'ya Nebewîyye, pirs kiriye ka ew çawa ye, Wî (babê wî) jî jê re gotiye;

"-Ez di vê de ti be'sekî nabînim."[674]

Qadî Iyaz wiha vedibêje:

"Hatiye dîtin ku Îbn-î Ûmer -radîyellahû anhûma- destê xwe danîye ser wî cihê ku Mezinê me Pêğember di minberê de li serê rûniştiye û ew bi çavê xwe ve hekandiye." [675]

Ev bûyera ku di navbera herdu Hezretan: Îmam Ahmed bin Henbel û Îmam Şafîî de derbas bûye jî di vê babetê de nimûneyeke sipehî ye:

Ji şagirtên Îmam Şafîî Rab'î bin Suleyman vedibêje:

Rojekê Îmam Şafîî ji min re got:

"-Rab'î, raje vê nameyê, ji Ahmed bin Henbel re bibe û piştre bersiva wî jî bîne."

Min jî rahişt nameyê û ez çûme Beğdadê. Min di nimêja sibehê de bi Ahmed bin Henbel re hevdîtin kir. Min digel wî nimêja sibehê eda kir. Dema

673. Zehebî, Sîyeru 'Elami'n-Nubela, Beyrût 1986-1988, XI, 212.
674. Zehebî, Sîyer, XI, 212
675. Qadî Iyaz, Şîfa, II, 47, 71; Îbn-î Teymîyye, Mecmûu'lFetawa, I, 230.

Îmam Ahmed bin Henbel ji mihrabê cuda bû, min name jê re pêşkêş kir û min jê re got:

“-Ev name, birayê we Îmam Şafîî ji Misrê ji we re şandiye.” Wî ji min pirs kir, got:

“-Ma tu dizanî name ji çi behs dike?” Min jî jê re got:

“-Ne xêr.” Vêca Ahmed bin Henbel ew mohra li ser nameyê jê vekir û dest bi xwendina wê kir. Ji nişka ve hêstir ji çavên wî barîn. Min jê re got:

“-Ya Îmam! Te xêr e! Ma çi di nameyê de dinivîse?” Wî jî ji min re got:

“-Îmam Şafîî di xewna xwe de Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- dîtiye. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji wî re gotiye:

«-Nameyekê ji Ahmed bin Henbel re binivîse û ji min jî silavan jê re bibêje. Helbet ewê bi fitneyeke mezin re rûbirû bimîne û wê ji wî were xwestin ku bibêje “Qur’an hatiye xuliqndin (!). Zinhar bila ew ji vê daxwazê re stûyê xwe xwehr neke! Xuda wê heta bi qiyametê navê wî bide jîyandin û bilind bike.»”

Min got:

“-Ya Îmam! Ev, di bara te de çi mizgînîyeke mezin e.”

Vêca Ahmed bin Henbel, ji keyfxweşîya xwe gomlekê li ser xwe ji xwe kir û ew da min. Piştî min jî bersiva nameyê wergirt, ez vegerîyame Misrê. Min name ji Îmam Şafîî re pêşkêş kir. Îmam Şafîî jî ji min re got:

“-Em naxwazin vî gomlekê ku wî ji te re bi hedîye kiriye ji te bistînin û te ğemgîn bikin. Lêbelê hema hîç nebe wî di avekê de noq bike û wê avê bide me, bi vî awayî bila em jî di bereketa wî gomlekî de bibin hevpar.”[676]

❁

Riha şerîfa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî ku di minberên mizgeftan de bi hezar û yek bayeğ-dan û îtînayan ji Esrê Seadetê heta bi roja me hatiye parastin ji bo ummetê dibe wekî bahoreke feyzdara rahmê. Ew hurmeta ku bi sedem eşq û hezkirina ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bîranînên ezîz ên wî re tê şanîdan jî wê pey-

676. Binêrin. Îbnu’l-Cewzî, Menaqibu’l-Îmam Ahmed bin Henbel, rûp. 609-610.

wendîya dilî ku ji bo pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hestpê tê kirin xurttir dike. Çendîn mûmînên evîndarên Pêğember ji bereketa van bîranînên ezîz îstîfade kirine.

Îhtîşama şeşsed û kusûr salîya Împeratorîya Osmanîyan ku ew ji bo ti dewleteka dîtira Îslamî bi nesîb nebûye, esil ji wê giringîya ku wê bi manewîyatê dayî, tê. Li gorî rîwayeteke meşhûr Osman Ğazî, di xanîyekî de dibe mêhvan, bi sebeb ku Qur'ana Pîroz di odê de hebû, wî bi şev lingên xwe dirêj nekirine û ew ranezaye; Yavûz Sultan Selîm Xan jî bi tazîmeke mezin Emanetên Mûqeddes anîne Îstanbûlê, çil hafiz tayîn kirine, bi awayekî ku bi sed salan ji hev qut nebe kiriye ku ew li ber serê wan Qur'ana Pîroz bixwînin, yek ji hander û tehfînerên manewî yên bingehîn ên mezinatîya Dewleta Osmanîyan e. Ew mezinatîya wê ya ku ew li ser zimanan bûye destan..

Xirqeya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- û Emanetên Mûqeddes ên dîger îro jî li Seraya Topqapîyê li Îstanbûlê ji bo zîyaretkirina mûmînan vekirî têne hiştin. Ev ji bo milletê me û ji bo Dinyaya Îslamî wesîleyeke şeref û teberrukê ye.

**"Min serdana qebran li we qedeğe kiribû. Vêga herin serdana wan. Lewra serdana qebran axretê di bîra wî tîne."** [677]

**Qebristan, dersxaneyeka hikmet û îbretê ne, serdanên qebran jî perwerdeya bi bandortirîna tefekkura mewtê ye."**

## C. ZÎYARETA QEBRAN

Însan di nav herk û darêja jîyanê de di navbera du hevdijên dehşetdar ên wekî hezkirina ji heyatê û lerizîna ji ber mirinê de dikeye û wisan nexweşhal radiwete. Heyat û mirin ku tim di nav darêj û herkeke daîmî de ne, heta maneyên rasteqîne yên wan neyên îdrakkirin, mahîyeta rasteqîneya însanî û sirr û hikmeta heqîqî ya di aferîna wî de jî nayêne fehmkirin.

Îdrak, di navbera du mechûlên mûezzam ên wekî "hatina dinyayê û çûna ji dinyayê" de tengav bûye. Heta mirov negihîje hukmê bihayekî rasteqîne'yê dinyayê, mirov hal û hereketên xwe jî li gorî vî bihayî tenzîm neke nerêse, mirov nikare ji alema sihên xapînokên dinyaya berwext rizgar bibe û ji bo rêwîtîyeke manewî ber bi mala rastî ve derkeve, here..

Mirin ji bo mûmînî, silava wusletekê ye ku ji Xuda tê, ew di nav keyfxweşîyan, letafetan û îltifatan de ji halekî veguhezîna ji bo halekî din e. Mirin ji bo fasiq û kafiran jî bagera ezabekî ye ku ew di nav rebenî û îzdîraban de can jidestdan û ketina di nav deryaya agirê cehennemê de ye..

Giringtirîn îrfana beşerîyetê, bi vekirina asêpirsa di bin axê de destpê dike. Heta raman, lêgerîn, kûrahîyên qelbî û hissên derûnî li hawîrdora rastîya mirinê nebin perperîk û perwane, heqîqeta vî welatê bi navê "qebr"ê eyan nabe.

677. Tirmizî, Cenaîz, 60; Mûslim, Cenaîz, 106.

Bi rastî ji bo însanî di heyatê de du şîretkarên giring hene. Yek ji van şîretkaran diaxive, ya din jî huş dibe. Şîretkara peyvdar Qur'ana Pîroz e, şîretkara ku bi huşbûnîya kûra xwe nesîhet û pendan dike jî mirin e.

Bav û kalên me bi pişta xwe paldana li ser vê heqîqetê, qebristan li nîvê bajaran û li ketingeh û derketingeha mizgeftan saz kirine da ku însan karibe bi miqdarekî têr û kafî ji vê mirina şîretkar îbret bigre. Dîsa bav û kalên me di qebran de wek dar jî dara selwî ya temendirêj tercîh kirine da ku ew havînzivistanê neqermiçe, rengê xwe bide dewamkirin û ew ji bo bêdawîbûnîya alema ji dinyayê biwêdetir bibe sembol..

Zimanekî pêzan ê mirinê nîn e. Lêbelê wê, di huşbûnîyeke kûr de çi maneyên mûezzam veşartine! Qebristan, bi adresên dê-bavan, zarûzêçan, hezkirî, xizm, lêzim û dostan ku jîyana mirinbera xwe xilas kirine, tije ne.

Alema qebrê, wê li gorî gelo me heyateke ji fermanên Xuda re guncaw jîyaye, yan jî nejîyaye, pêkwere. Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di bara wê de bi bikaranîna tabîra:

"*Qebr, bexçekek ji bexçeyên cennetê ye, yan jî koncalek ji koncalên cehennemê ye*."[678] peywendîya asê di navbera jîyan û mirinê de û ew elaqeya di navbera wan de îşaret kiriye.

Dema Hezretê Osman -radîyellahû anhû- li ber qebrekê radiwestîya, têr digrî heta ku riha wî ji hêstirên çavên wî şil dibû. Hinekan jê re got:

"-Dema tu cennet û cehennemê bibîrtînî, tu nagrî, lêbelê dema tu qebrê bibîrtînî tu digrî!"

Hezretê Osman -radîyellahû anhû- ev bersiv da wan:

"-Lewra min ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bihîst ku wî wiha got:

«*Qebr menzila pêşîya axretê ye. Heke însan karibe ji wê xilas bibe, yên piştî wê hêsantir in. Heke însan ji wê xilas nebe, menzilên piştî wê ji qebrê zortir û dijwartir in.. Hîç ti dîmeneke ku min dîtî bi qeder qebrê ne tirsbexştir û dehşetbexştir e!*»[679]

678. Tirmizî, Qiyamet, 26.
679. Tirmizî, Zuhd, 5/2308; Ahmed, I, 63-64.

Li gorî Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- vegotiye; jineke cihû, rojekê hate dev min, behsa ezabê qebrê kir û got:

"-Xuda te ji ezabê qebrê biparêze!"

Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- jî pirsa ezabê qebrê ji Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- kir. Vêca Mezinê me -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

"-*Belê, ezabê qebrê heq e*."

Dêya me Hezreta Aîşe dibêje: "Di piştî vê de min hîç Resûlûllah nedît ku wî nimêj kiribe û ji ezabê qebrê îstîaze nekiribe."[680]

Bera -radîyellahû anhû- vedibêje:

"Em bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re li ser cenazeyekî bûn. Mezinê me li kenarê qebrê rûnişt û girî, ew qeder girî ku (bi hêstirên çavên wî) ax şil bû. Piştre jî wiha got:

«-Gelî *birayên min! Ha xwe ji vê mirinê re baş amade bikin (ku ewê were serê me tevan)!*»"[681]

Bi rastî qebristan, dersxaneyeka hikmet û îbretê ne, serdanên qebran jî perwerdeya bi bandortirîna tefekkura mewtê ye.

Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wek nimûneyeke wefadarîyê dem bi dem diçû serdana qebrên sehabîyên xwe yên ku berî wî çûne axretê û ji bo wan dûayên xêrê kirine.

Çawa Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- diçû serdana qebrên şehîdên Uhudê û wiha digot:

"*Di hemberê tiştên ku we li ber wan sebrkirî de silav li we bin! Mala axretê ji bo we çi qeder xweşik e!*"[682]

Dîsa ew dem bi dem diçû Goristana Beqîî'yê, silav li wan dikir û ji wan re wiha dûa dikir:

680. Buxarî, Cenaîz, 87; Mûslim, Mesacid, 123.
681. Îbn-î Mace, Zuhd, 19.
682. Taberî, Camîu'l-Beyan, XIII, 186; Îbn-î Kesîr, Tefsîr, II, 529.

“*Gelî niştecihên mala mûmînan! Selam li we be. Xuda hez bike, emê jî bigihin we. Ez, hem ji bo me, hem jî ji bo we, ji Xudê Teala efîyet û selametîyê dixwazim.*”[683]

Heta şevekê dema Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li odeya Hezreta Aîşe radiza, Cebraîl -eleyhisselam- hat, ew şîyar kir û fermana ku anîbû, jê re teblîğ kir: Xudê Teala ji wî dixwest ew biçe Goristana Beqîî’yê û ji bo medfûnên (veşartîyên) li wir dûa bike.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hewlda Hezreta Aîşe-radîyellsahû anha- şîyar neke û ew hêdîka rabû ser xwe. Vî halê wî meraqa dêya me Aîşe kişand ser xwe ku ew jî ji xwe hê ranezabû. Piştre jî ew bi dûv Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ket û wê heta bi Qebristana Cennetu’l-Baqî’yê ew taqîb kir.

Dema wê dît ku wa ye Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- herdu çavên wî bi qeder du çeşman girîne û ji bo ummeta xwe dûa kirine, wê ji kirina wî şerm kir. Li wê deverê piçekî rawestîya û li vî halê hestgermê Pêğemberê Zîşan seyr kir. Piştre jî ew bilezûbez vegerîya, hate malê, lihêfa xwe bi ser serê xwe de kir û wekî ku ew razabe, wisan kir. Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di cih de li pey wê vegerîya hate malê, Hezreta Aîşe nefs bi nefes dît, rewşa wê fehm kir, gazind jê kir û jê re got:

“*Ma tu tirsîyayî ku Xuda û Pêğemberê wî neheqîyê li te bikin?*”[684] û bi vî awayî jê re da zanîn ku bizavên wê ji terefê Xudê Teala ve têne mûraqebekirin.

Mûaz bin Cebel -radîyellahû anhû- vedibêje:

“Dema Mezinê me Pêğember ez ji bo Yemenê wek walî şandim, heta bi derveya Medînê oğira min bi xêr kir. Ez li heywanê xwe siwar bûm û ew jî birêve dihat. Wî hinek şîret li min kirin, piştre jî ji min re wiha got:

«-*Ya Mûaz! Belkû di piştî vê sala min de tu hîç min nebînî! Îhtîmal heye tu werî vê mizgefta min û qebra min!*»

Dema min ev peyv jê bihîstin, min bi huzna cudabûna ji Resûlê Xuda dest bi girî kir.

683. Mûslim, Cenaîz, 104.
684. Mûslim, Cenaîz, 103.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji min re got:

«*-Mûaz, negrî!*» Piştre wî berê xwe da alîyê Medînê û wiha got:

*«-Ji navbera mirovan yên zehf ji min nêzîktir ew mûtteqî ne, ku kî dibe û li kuderê dibin li hemberî Xuda xwedî teqwa bin.»*[685]

Dawud bin Ebû Salih wiha vedibêje:

Rojekê Merwan, zilamek dît ku wî serê xwe danîbû ser kevirê qebra şerîfa Resûlûllah, vêca bi berstika wî girt û jê re got:

"-Ji te were ku tu çi dikî?

Dema wî zilamî serê xwe wergerand (Merwan) meyzand ku çi bibîne, ev zilam Ebû Eyyûb el-Ensarî -radîyellahû anhû- ye. Wî sehabîyê aşiqê Pêğember jê re wiha got:

"-Erê, ez dizanim çi dikim. Ez hatime cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, ez nehatime cem kevir. Min ji pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- bihîst ku wiha digot:

«*Dema ehlê dîn wî hildin ser xwe ji bo dîn endîşe neke; lêbelê dema ne-ehl dest bi tedwîra dîn bikin, tu ji bo dîn çi qeder endîşe bikî û li serê bigrî, cihê wê ye.*»"[686]

Em di vê weqaetê de dibînin ku sehabîyekî rûyê xwe bi qebra şerîfa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ve hekandiye û ew zîyaret kiriye.

Çawa Fexrê Kaînatê -sellellahû eleyhî we sellem- dem bi dem diçû serdana qebrê wan, her wiha wî sehabîyên xwe û ummeta xwe jî di vê babetê de bi van peyvên xwe teşwîq kirine:

"*Min serdana qeberan li we qedeğe kiribû. Vêga jî hûn herin serdana qebran. Lewra serdana qebran, axretê di bîra we tîne.*"[687],[688]

685. Ahmed, V, 235; Heysemî, IX, 22.
686. Ahmed bin Henbel, V, 422.
687. Tirmizî, Cenaîz, 60; Mûslim, Cenaîz, 106.
688. Di serdema Cahilîyetê de însanan hizr pê dikirin ku gîyanên bav û kalên wan qudsîyetê qezenc dikin ji lewma îftîxar bi wan dikirin û diçûne serdana qebran. Cenabê Pêğember jî di serdemên pêşîn de serdana qebran qedeğe kiribû da ku ti eserek ji vî adetê batil ê cahilîyetê nemîne. Çi dema ev tehlûke berzewal bû, êdî bi taybetî bi emanca tefekkura mewtê destûr ji bo serdana qebran daye.

Ji tabîînan Îmam Şa‘bî wiha dibêje:

“Ensarîyan, dema yekî ji lêzimên wan wefat dikir, ew dem bi dem diçûn serdana qebra wî dikirin û li cemê Qur’an dixwendin.”[689]

Serdana qebran çawa ji bo serdankarî wesîleya îbretê ye, aynî wisan ew ji bo mirîyên ku serdana wan tê kirin jî wesîleya rahmê ye. Lewra ew kesê ku dikeve qebrê, dibe wekî wî însanê ku ketî teqanê îmdad û hewarê çavnêrî dike.

Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- wiha rîwayet dike, dibêje:

Mezinê me Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem-, dema di ber du qebran re derbas bû, di bara wan de wiha digot:

“*Ew herdu jî ketine ezabê, lêbelê ne ji ber gunehekî mezin e. Yekî ji wan ji ber ku peyv dibirin û dianîne, yê din jî ji ber ku dema destava biçûka xwe xirab dikir, bi awayê pêwîst xwe jê nediparast ezabê dibînin.*”

Peyre jî çiqilekî şîn ê xurmê xwest. Ew ji bo herduyan kire du-nîv, piştre her yek ji wan herduyan li ber serê wan çandin. Piştre peyvên xwe wiha dewam kirin, got:

“*Hêvî heye ku heta ew hişk nebin ew ezabê wan sivik bikin.*”[690]

Tefsîrzan Qurtûbî vê hedîsê wiha îzah dike, dibêje:

“Beşa «heta ew hişk nebin», îşaret pê dide ku heta ew şîn bimînin ji ber ku tesbîhan dikine. Çawa alimên me jî wiha gotine: Ji dar çandina li ser qebran û ji xwendina Qur’ana Pîroz li wir, yên li wir ji wan îstîfade dikin. Heke çandina darekê jî ezabê mirîyan sivik bike, vêca kî dizane ka ew ji Qur’an xwendinê çi qeder îstîfade dikin? Sewaba wî tiştê ku ji mirî re tê bi hedîyekirin jî digihîje wî.”[691]

Ew rahma îlahî ya ku bi sebeb tîlaweta Qur’anê digihîje xwendevanê xwe ji bo mirî jî jê îstîfade bikin, bi taybetî xwendina Yasîna Şerîf usûleke ku herkes pê dizane û wê tetbîq dike.

Çawa pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsên şerîf de wiha dibêje:

689. Ebûbekr bin Hellal el-Qîrae înde’l-Qubûr, jim: 7.
690. Mûslim, Teharet, 111.
691. Qurtûbî, Tefsîr, X, 267.

"..*Yasîn qelbê Qur'anê ye. Heke kesek wê bixwîne, pê (bi xwendina wê) rizaya Xuda û mala axretê taleb bike, bêşiwar gunehên wî têne efûkirin. Hûn Sûretê Yasînê li ser mirîyên xwe jî bixwînin.*"[692]

"*Dema yek ji we wefat bike, wî zêde nedin çavnêrîkirin û bibin qebrê. Dema hûn wî defin bikin jî bila yek ji we li ber serê wî Sûretê Fatîhê bixwîne, li ber lingên wî jî beşa dawîna Sûretê Beqere (Amenerresûlû) bixwîne.*"[693]

Ala bin el-Leclac, ji bavê xwe Leclacê ku yek ji eshabê kîram e, rîwayet dike ku dema wî di esnaya wefata xwe de ev wesîyet li wî kiriye, jê re gotiye:

"Dema hûn min bixin qebrê, bibêjin; «bismillahî we ela sunnetî Resûlîllah»[694] û axê bi ser min de bavêjin. Li ber serê min beşa pêşîn û paşîna Sûretê Beqere bixwînin. Bêşiwar ez bûme şahid ku Ebdûllah bin Ûmer jî ev tetbîqat sipehî dîtiye."[695]

Ji eshabê kîram 'Emr bin 'As -radîyellahû anhû- di esnaya wefata xwe de ev gotina xwe ya wek wesîyeta xwe ji mirovên li hawîrdorên xwe re gotî, caliba diqqetê ye:

"Dema hûn min di qebra min de defin bikin, mûddeteke bi qeder ku hêştirek were serjêkirin û goştê wê were belavkirin li ber serê qebra min çavnêrî bikin ku ez bi hebûna we ji bo jîyana nû'ya xwe îmkana hînbûnê bibînim û ez cewaba ku bidim qasidên Rebbê xwe hazir bikim.." [696]

Newewî vê hedîsê di kitêba xwe de zikr dike û van peyvên Îmam Şafîî -rahmetullahî eleyh- jî diguhêze, dibêje:

"Li ber serê qebrê xwendina ayet û sûretan ji Qur'anê mûsteheb e. Xwendina temamê (xetimkirina) Qur'anê jî hê sipehîtir e."[697]

Li gorî Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- rîwayet kiriye, pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

692. Ahmed bin Henbel, Musned, V, 26.
693. Taberanî, el-Mû'cemu'l-Kebîr, XII, 340; Deylemî, Musned, I, 284; Heysemî, Mecmau'z-Zewaîd, III, 44.
694. Em bi navê Xuda û li ser sunneta Resûlûllah -sellellahû eleyhî we sellem- (te ji Heq re bi emanet dikin).
695. Beyheqî, es-Sunenu'l-Kubra, IV, 56.
696. Mûslim, Îman, 192.
697. Newewî, Rîyazu's-Salihîn, 293.

"*Mirîyê di qebrê de wekî wî kesî ye ku di deryayê de dike bixeniqe û di nav dehşetê de arîkarîyê dixwaze. Çavê wî li dûayekê ye ku ji bavê wî, ji dêya wî, ji birayê wî û ji hevalê semîmî û sadiqê wî jê re were. Heke dûayek jê re were, ev ji bo wî ji dinyayê û ji yên li dinyayê bi qîmettir û hezkirîtir dibe. Hîç şiwar nîn e ku Xuda, ji ehlê qebrê re bi bereketa dûayên mirovên li erdê wekî çîyayan mûkafatê dide. Baştirîn dîyarîya ku zindî karibe ji mirîyan re bişîne, ji bo wan îstiğfar-kirin û li ser navê wan sedeqe-dan e*."[698]

Li gorî ji Osman bin Effan -radîyellahû anhû- hatiye rîwayetkirin, piştî mirîyek hate definkirin pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li ber serê qebra wî rawestîya û wiha got:

"*Ji bo birayê xwe îstiğfar bikin û nîyaz bikin ji bo Xuda wî di qebra wî de li ser rastdana bersiva pirsan serfiraz bike. Lewra vêga pirs ji wî têne kirin*."[699]

Cabir bin Ebdûllah -radîyellahû anhû- vedibêje:

Dema Se'd bin Mûaz -radîyellahû anhû- wefat kir, em digel pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- çûne ser qebra wî. Mezinê me Pêğember piştî nimêja cenaze li ser Se'd kir, ew xist qebrê, ew bi axê hate nixumandin, mûddeteke dirêj tesbîhat xwendin. Me jî tesbîhat dixwendin. Piştre wî tekbîr anî, me jî tekbîr anîn. Piştre pirs jê hate kirin, jê re hate gotin:

"-Ya Resûlellah! We çima tesbîhat xwendin û we tekbîr anîn?"

Wî ev bersiv da:

"-*Heta Xuda ferehî dayê, qebrê ev bendeyê salih guvaşt û her guvaşt*."[700]

Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- wiha dibêje:

"Wê roja ku Se'd bin Mûaz hate definkirin Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li ber serê qebra wî rabû jipêya û wiha got:

"*Heke kesek ji fitna qebrê xilas bibûya, hîç şubhe nîn e ku Se'd bin Mûaz jê xilas dibû. Lêbelê qebrê pêşî ew guvaşt, piştre jî Xuda ferehî da wî*."[701]

698. Deylemî, Musned, IV, 103/6323; Elî el-Mûtteqî, XV, 694/42783; XV, 749/42971.
699. Ebûdawud, Cenaîz, 67-69/3221.
700. Ahmed bin Hnbel, Musned, III, 360.
701. Taberanî, Mû'cemu'l-Kebîr, X, 334.

Wekî ku ji van rîwayetan jî tê fehmkirin çûna serdana qebran, silav dana mirîyên li wan qebristanan, ji bo wan dûa û îstiğfar kirin, li ser navê wan xêr û hesenat kirin, tîlawetkirina Qur'ana Pîroz, ji bo mirîyan wesîleya rahmê ye. Di Qur'ana Pîroz de Rebbê me, ji me dixwaze em ji bo birayên xwe yên ku berî me çûne axretê, wiha dûa bikin:

"**Ey Rebbê me! Me û birayên me yên ku bi îmanê berî me çûne û derbas bûne, efû bike; di qelbên me de li hemberî yên ku îman anîne hîç ti kînekî nehêle! Bêşiwar tu zehf bişefqet î, û pirr bimerhemet î**."[702]

Lêbelê di serdana qebran de babeteke dîtira ku divê li ber çavan were girtin jî xwe vedan û dûrkirina ji hinek tetbîqatên çewt û tevgerên bid'at e.

Heke çi qeder alimên Ehlê Sunnetê, gellek tişt nivîsandine û gotine ji bo di bara serdana qebran de mûmîn ji îfrat û tefrîtê werin parastin jî lêbelê dîsa di vê babetê de herdu awayên tetbîqata çewt jî yanî îfrat jî û tefrît jî -mixabin- bi awayê layiq heta bi îro jî nehatine astengkirin..

Serdana qebran zêhnê însanên agahîyên dînî yên wan teng zehf tevlîhev kiriye û xwerûkirina hessasîyet û bizavên bi serdana qebran re elaqedar ji îfrat û tefrîtê jî karekî zehf zor û zehmet e. Lewra bêkîfayetîya însanî di fehmkirina heqîqetên mûcerred de serdana qebran -ji bo hinek mirovan- adeta bûye naverokeke ku ew şirk were jimartin.. Her wekî mûm pêxistina li ber serê qebrê, kinc pêve girêdan û rasterast arîkarî xwestina ji zatê di qebrê de razayî.. Ev jî aynî wekî bi sedem bêkîfayetîya krîstîyanan di fehmkirina mefhûmê Xuda-yekî mûcerred de bi îlahkirina pêğemberê masûm Hezretê Îsa, tezahureke lawazî û bêçaretîyê ye. Li alîyê din jî ew dîtin-nêrîna zêde bipêşveçûyî ku serdana qebran "şirk" dijmêre û wergirtineke di mahîyeta tefrîtê de ye ku li hemberî van îfratan (zêdegavîyan) wek aksulamel li holê hatiye danîn, heman xetayî bi berevajî vê, li holê datîne..

Îslam, wekî ku di her babetê de wisa ye, di mijara serdana qebran de jî prensîba îtîdalê esas digre. Wekî ku li jorê hate vegotin, peyv û tetbîqatên Hezretê Pêğember û eshabê kîram bi serdana qebran re elaqedar, ji bo me şanî didin ka di vê babetê de emê çawa tevbigerin ji bo nekevin îfrat û tefrîtê.

Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- vedibêje:

702. Heşr, 59/10.

Dêya Se‘d bin Ubade -radîyellahû anhû- wefat kiribû. Ew hate dev Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, jê pirs kir, jê re got:

“-Ya Resûlê Xuda! Dema ez li cemê bûm dêya min wefat kir. Heke ez li ser navê wê sedeqe bidim feyda wê jê re çêdibe?”

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

“-*Erê*.” Se‘d -radîyellahû anhû- jî jê re got:

“-Ya Resûlê Xuda! Hûn jî şahid bin ku ez dehla xwe ya fêkîyan ji bo dêya xwe bi sedeqe didim.”[703]

Li gorî Ebdûrrahman bin Ebû Amra vegotiye; dêya wî xwestibû koleyekî azad bike û ev jî heta bi sibehê texîr kiribû. Lêbelê hê ew negihabû sibehê wefat kiribû. Dema Ebdûrrahman ji Qasim bin Mûhemmed pirs kiribû, jê re gotibû:

“-Ma heke ez li ser navê dêya xwe koleyekî azad bikim wê feyda wê ji dêya min re çêbibe (sewaba wê dê bigihe dêya min)?” Qasim ev bersiv dabû wî:

“Se‘d bin Ubade hate cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, jê pirs kir, jê re got:

«-Dêya min wefat kir, heke ez li ser navê wê koleyekî azad bikim feyda wê jê re çêdibe?» Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî jê re got: «Erê!»”[704]

Ebdûrrahman ê kurê Ebûbekr -radîyellahû anhû- di xewn de ji nişka ve miribû. Dêya me Aîşe bi xêra vî birayê xwe gellek kole azad kirine.[705]

Îbn-î Ebbas -radîyellahû anhûma- vedibêje:

Kesek hate cem pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem-, jê re got:

“-Ya Resûlellah! Dêya min wefat kir, deynê rojîya mehekê li ser wê hebû, ma ez li ser navê wê vê rojîyê eda bikim?”

703. Buxarî, WEsaya, 15.
704. Mûwetta; Itq, 13.
705. Mûwetta, Itq, 14.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê pirs kir, jê re got:

"-*Ma heke deynê mal li ser dêya te hebûya te ew li ser navê wê eda nedikir?*"

Dema min jê re got;

"-Belê min ew eda dikirin!" Vêca Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji min re got:

"-*Deynê Xuda ji bo edakirinê layiqtir e!*"[706]

Li gorî rîwayeteke din pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kir, wiha got:

"*Ma heke deyn li dêya te hebûya û te ev deyn eda bikira, ma nedibû ku te ev deyn ji ber wê ve eda kirine?*"

Çi dema berpeyvê wî got: "Belê" Wî jî got:

"-*Naxwe ji bo dêya xwe rojîya bedel bigre!*"[707]

Rêberê me yê hîdayetê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

"*Dema însan bimre hemû amelên wî qut dibin. Lêbelê ev hersê tişt ji wan hatine veqetandin: Sedeqa Carîye, Îlmê ku feyde jê tê dîtin û ewladê salih ê ku jê re dûa dike.*"[708]

Ev hedîsên şerîf, eşkere dikin; mûmînên ku wefat kirine, feydê ji wan hesanat û xêran dibînin ku ew di dema sağlemîya bedena xwe de kirine û ew di piştî dema wefata wan de jî her dewam dikin. Ji bilî xêrên ku wan bi xwe kirine, ew îstîfade ji wan dûa û înfaqan jî dikin ku lêzimên wan yên sağ û mûmînên birayên wan di piştî wefata wan de bi xêra wan didin. Her wiha ev hedîs, mûmînan ji bo dana van cure û xêr û hesenatan teşwîq dikin.

Bi rastî divê mûmînê ku dimre û diçe axretê li pey xwe gellek xêran bike ku sewaba wan li wî vegere. Bi mûqtezaya hedîsa şerîfa ku li jorê derbas bûyî; naxwe ew mûmînê ku wefat kiribe, heta xêr û hesenata wî berdewam bike, ecra wî jî her dewam dike û deftera amelê wî nayê girtin. Ji bo mûmînekî ku

706. Mûslim, Sîyam, 155.
707. Mûslim, Sîyam, 156.
708. Mûslim, Wesîyyet, 14.

wefat dike, bi tena serê xwe dikeve alema qebrê û xatir ji dinyayê dixwaze wek deynekî wî yê wefadarîyê di stûyê warisên wî û dostên rasteqîne yên wî de, bi xêra wî kirin û dana xêr û hesenatên curecur e. Ev jî ji amelên çêtirîn e..

Bi taybetî edakirina deynê mirîyan, amelekî salih e ku ji terefê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ve jî hatiye teşwîqkirin. Dema cenazeyek dihate cem Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo ew li serê nimêj bike, pêşî pirs dikir, gelo deynê wî hene, yan jî nîn in, heke deynê wî hebûna piştî ew dihatin edakirin ji nû ve wî li ser wan nimêj dikir. Ev hal, ji bo mirîyên me jî, ji me re çi talîm û hîndekarîya merhemeteke tenik e.

Di vê babetê de îctîhadeke Îmam Mûhemmed heye. Ew jî ev qiyas e; ew rojîyên ku bi sebeb zerûretê nehatine girtin û ji bo qezakirina wan jî derfet çênebûye, çawa ji ber van rojîyan ve fîdye tê dayîn. Her wiha ew nimêjên ku nehatine edakirin û ji bo qezakirina wan jî derfet nehatiye dîtin, ji bo efûbûna wan jî fîdye tê dayîn. Îmam Mûhemmed ev fîdye dayîna ji ber nimêjên ku nehatin edakirin ve bi tabîra “îsqata selatê” îfade kiriye. Li gorî vê, ji ber her wextê nimêjeke ku nehatibe kirin ve, divê xwarina feqîrekî ya rojekê were dayîn, yan jî divê di hemberê xwarina wî ya rojekê de mebleğa diravan were înfaqkirin. Lêbelê ev înfaqa ku were kirin jî divê di miqdarê wê de hîç ti guhertinek neyê kirin û aynen ew ji bo hewcedarî were guhastin. Di vê îctîhada Hezretê Îmam Mûhemmed de sê feydên mûhîm têne mûlahezekirin:

**a)** Teşwîqkirina înfaqê û gihiştina înfaqkerî ji bo ecra înfaqa xwe ye,

**b)** Keyfxweşbûna hewcedaran û ji bo mirîyan dûakirina wan e,

**c)** Hêvîkirina ef û rahma Cenabê Heq ji bo mirîyan e.

Mûamela “îsqat”ê[709] ku ew bi xêra mirîyan tê dayin, mixabin di roja me ya îroyîn de bi awayê “dewr”kirinê[710] ji emanca esilî ya wê hatiye bidûrkirin û ew ketiye mahîyetekê ku ji rûhê Îslamê re dijber be.

---

709. **Îsqat**: Ew kesê ku deynên wî yên îbadetê her wekî nimêj, rojî, qurban, nezr û k -faretan lê hebin û berî ew wan bicih bîne jî wefat bike, hingê ji bo xilasbûna ji van deynan bedelên wan wek aynî/diravî dide feqîran, ha ji vê re îsqat tê gotin. (Hayrettîn Karaman, Dema mirov oğira rêwîyê ebedîyetê bi xêr bike, rûp. 81-85)

710. **Dewr**: Di şûna ku bedelên aynî/diravî bide feqîran, miqdarekî mûayyen dixin nav kincekî da ku ji feqîran re hîbe bikin, piştre bi rêya hîbeyê dubare ew ji wî distîne û ew jî dide wî. Ev kar wiha dewam dike, heta ku deyn xilas dibin. Tetbîqateke wiha di serdema Hezretê Pêğember -sellellahû eleyhî we sellem-, de di serdema tabiînan

Ev tetbîqata ku jê re "dewr" tê gotin, êdî bûye cureyeke hîlebazîyê. Bi vê cure tetbîqata çewt, hewldan tê kirin ji bo ew îbadetê ku nehatiye îfakirin were telafîkirin û dîsa hewldan tê kirin ji bo ew sedeqeya ku di rastîyê de nehatiye înfaqkirin, bi bizava dîmendara sedeqeyê were telafîkirin, her wekî ku bi rastî hatibe înfaqkirin. Ev jî wiha; kesekî ku ji bo axretê koç kiriye, bi meqsûda paqijkirina wî ji deynên[711] nimêjê ku eger û îhtîmal heye ew di stûyê wî de mabin. Vêca miqdarek dirav li holê tê danîn, divîyabû ev dirav bi nîyeteke xalîsane ji bo hewcedaran werin guhastin û dayîn. Lêbelê bi pirranî ev di navbera çend kesan de bi îfadeyên "«**qebiltû**» min wergirt, min qebûl kir û «**wehebtû**» min hîbe kir" yek ji destê yê din dewr distîne û bi vê jî qaşo ew mebleğê ku tê înfaqkirin zêde dibe.. Diravekî hindik pêşî ji bo gellek însanan -bi hereketeke ku ji serî ve unsura nîyetê dîyar e- tê dayîn, piştre jê tê standin, ew ji bo yekî din tê dayîn û dubare ji wî jî tê standin. Bi vî awayî tê bawerkirin ku bi qeder hijmara mirovên hazir mebleğa diravan zêde bûye û xêr jî bi zêde bûye. Ev bid'ateke mekroh e, ewên ku vê dikin, bes dikarin xwe pê bixapînin.. Bi taybetî tewessulkirina mirovên zengîn ji bo vê rê û hêvîkirina wan ji bo encamekê ji vê kirina xwe bizaveke zehf heyret-bexş e. Zêdebarî vê jî ev rewş, mirovên ku ji derve lê dinêrin, wê wek kelevajîyeke mezin werdigrin û wekî hewldan ji bo xapandina -haşa- Xuda tê dîtin. Ev ji îştîğala bi abesê pê ve ne tiştekî din e.

**Ya Reb! Nîyetên me bi rizaya xwe telîf bike! Me ji encama wan kesên ku xwe di dinyayê de noq kirine û xwe di tasek av de birine helakê,**

---

û serdema tabiê tabiînan de jî nîn e.. Lêbelê ji bo îsqatê di dawîya sedsala duyema hicrî de û ji bo îsqata bi awayê dewrê jî di sedsala pêncema hicrî de cewaz hatiye dayîn. Adeta dewrê ku di zemanê me de bûye kevneşopîyek û tê zenkirin ku ew pişta xwe dispêre jêderên Îslamê, di mahîyeta bid'atekê de ye ku ew di înfaqê de ji bo nemerdîyê û di îbadetan de ji bo tenbelîyê sebebê pêktîne. Ji lewma divê ev adetê dewrê were terkkirin, divê rasterast li ser navê mirî sedeqe werin dayîn, divê jê re xêr û hesenat werin kirin û divê mirov ji bo efûya qusûrên wî jî lavlavan ji Xudê Teala bike. Bi vî awayî hem wê bibe ku mirov li gorî sunnetê hereket kiriye. Hem jî ew îbadetên malî, xêr û sedeqeyên ku hatine kirin wê xwediyê rastîyê xwe dîtibe, yanî wê şexsên hewcedarên rastî dîtibin. (Hayrettîn Karaman, Dema mirov oğira rêwîyê ebedîyetê bi xêr bike, rûp. 81-85).

711. Tişta ku bi deynên nimêjê tê qesdkirin ev e; ew nimêj in ku mirovê wefat kiriye, di heyata xwe de ew eda nekirine. Yan jî ew eda kirine, lêbelê bi awayê layiq li şertên batinî yên wekî îxlas û xuşûê li wan diqqet nekiriye. Heke na, qesda wê ne ew nimêj in ku di jîyana xwe de sistahî kiriye û bawerîya xwe bi telafîkirina wan ya bi îsqatê anîye, yan jî wî bi sedem tenbelîya xwe ew eda nekirine.

**biparêze! Ya Rebbê me, yê bimerhemettirînê merhemetdaran! Heyata me û mirina me, bi bereket, nîmet, sipehîtîyên bilind ên ku te ji bendeyên salih ên xwe re lutf kirine û bi wusleta cem Xuda, mûzeyyen û mûkemmel bike!**

**Ya Reb! Ji bo me tevan bi nesîb bike ku em karibin bi nêrîna mehebbeta îlahî li kaînatê temaşe bikin, em karibin bi şiûr, hest, lerzên wijdanî û ji goşeya heyecanên îmanî ve li wê seyr bikin, em karibin bi şevnemên poşmanîyê yên ku ji çavan dibarin bigihin keş û hewaya ğufranê û em karibin bi rûyê sipî û hizûra wijdanî bigihin hizûra Te!**

**Amîn.**

"Îqaz û şîretên dostên Heq her yek ji wan ji keş û hewaya Qur'anê û ji sohbetên Resûlê Xuda xuyahî û eksek e."

## JI DOSTÊN HEQ ŞÎRET Û NESÎHET

Dostên Heq, ew bextiyar in ku di rêya tesewwufê de zahir û batinê xwe îkmal kirine, qunağên qelbî qut kirine, gihane mûkemmelîyeta bizavan û ew gihane wê şerefê ku ew bi "**weresetul enbîya**" (warisên pêğemberan) tê îfadekirin. Dostên Heq ew kesên zirweyî ne, ku mûkemmelîyeta îrşad û bizava pêğemberî ne, li ser zemanan hatine parvekirin. Yanî dostên Heq, ji bo wan kesên ku negihane şerefa dîtina Hezretê Pêğember û dîtina eshabê wî, rêberên fiêlî û mûşexxes in.

Hezretê Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîf de wiha dibêje:

"*Alim (ên ku zahir û batinê xwe îkmal kirine û îlmê xwe bi îrfanê wergerandine), warisên pêğemberan e.*"[712]

Ev mûmînên kamil, ji bo tecellîyên li ser sitûr û pehnên navên Rahman û Rahîm ên Cenabê Heq gihane, di wan de merhemet û şefqet bûne tebîatê esilî. Dîsa ev mûmînên salih, ji xwedğemîya "nefsî, nefsî" (ez xêra xwe tenê dixwazim) xilas bûne, bi dîgerğemîya "ummetî, ummetî" (ez ne di ğema xwe de me, ez di ğema ummeta xwe de me, ez rizgariya ummeta xwe tevî dixwazim!) gihane û ew temenê xwe tevî ji bo îrşadê dijîn. Temenên wan yê îrşadê di piştî cesedên fanî yên wan de jî dewam dikin. Ew mûmîn ew kes in ku nefsên xwe îslah kirine, di encama îslahkirina nefsên xwe de jî rûh û gîyanên xwe wek pir bikartînin da ku bigihin wusleta îlahî. Ew di nav hewldan û ğeyretê de dibin ji bo ummet jî di vê rêyê re derbas bibe û bigihîje Rebbê xwe. Ew, ji bo wan girseyên ku li hêvîya rizgarîyê ne, seyda û mûallim in. Ev mûmîn ew qehreman in ku di hizûra Xuda û bendeyên wî de di wijdanên xwe de berpirsîya ji cemaetekê, hildigrin.

712. Ebûdawud, Îlm, 1.

Her yek ji îqaz û nesîhetên dostên Heq, eks û xuyahîyek ji sohbetên pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Lewra navenda îstîfadeya manewî her Ew e. Sohbet, îqaz û nesîhetên ku bi heyecanên rûhî tije ne, ew tîrêj û ronahî ne, ku tev bi teselsulê ji wê navendê hatine guhastin. Divê însan dîwanên dostên Heq ên wiha ji bo xwe ğenîmet û qezenc zanibe. Dostên Heq, ew şexsîyetên nimûneyî ne, ku hem bi gotinê, hem bi kirinê hem jî bi hissê heyata pêğembertîya bîst û sê salîya Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ji ummetê re dane xuyakirin û şanîdan.

Dostê Heq, bi mehebbeta ji Mewla (Xuda) yê xwe her wekî wan perperîkan ku li hawîrdora gurîya lembê digerin, bi bêîrade bûye ku êdî Mewla ji bo wî bûye ew çavê ku pê dibîne û ew guhê ku pê dibihîze. Ji ber ku ew di bin tecellîya mehebbet û eşqa Heq de ye, bûye wekî wê kağeza ku di bin mercekê de dişewite, temayulên nefsanî jî wisan temenê xwe di wî de xilas kirine. Bi vî awayî ji ber ku ew bûye merkeza cazîbeyeke nûranî, însanên din jî bi îradeya xwe, yan jî bi bê-îradeya xwe ji wan hez dikin û dilên însanan ber bi wan ve dikişin, diherikin. Îqaz û nesîhetên dostên Heq ji bo rûh û gîyanên mirovan dibin merhem û şîfa..

Dostên Heq gihane vê ufûqa ulwî û dîrayeta manewî, îqaz, îrşad û nesîhetên wan di şîyarkirina dilên ğafil de, bi qiyaskirin li ser nesîhetên mirovên ku bi îlmê xwe amel nakin, xwedî qîmet û tesîreke mezintir e. Li ser vî esasî, divê însan nesîhetên feyzdarên wan ji bo xwe ğenîmet û qezenc zanibe û bi vê şiûr û hestê bi semîmîyet û mehebbet dilê xwe bide wan îrşadên wan ku aramî û hizûrê ji bo rûhan dibexşînin.. Dostên Heq di meqamê qendîlên îstîqametê de ne, ew bi nesîhet û şîretên xwe rêya seadeta ebedî rohnî dikin. Ha va ne, ji we re çend mîsal ji nesîhetên wan:

**Hesenê Besrî** -quddîse sirruh- (jidêbûn: 642, mirin: 728)

Ey însan! Bawermendê durust, çendan ehlê îhsanê be jî dîsa di nav tirsê de lê dibe sibeh. Ji xwe ev, ji wî re layiq e. Bawermend dîsa bi heman tirsê digihîje êvarê. Erê, ew herdem di navbera van herdu tirsan de ye:

1. Gunehên bûrî: Ew bi sedem van gunehên xwe nizane Cenabê Heq wê çawa pê re mûamele bike.

2. Jîyana hê were: Gelo ewê jîyaneke çawa derbas bike, gelo ewê nefesa dawîn çawa bide? Ew tim û daîm li ser bersiva van pirsan tefekkur dike.

Gelî mirovan! Vê heqîqetê îdrak bikin û wisan amelê salih bikin. Hûn çi karî bikin, Xuda û Resûlê xwe her we dibînin. Hûnê rojekê her li wî Xudayî bêne vegerandin ku ew tiştê nihanî û eşkere her dizane. Ha ew roj, ewê tiştên ku we kiribin yek bi yek ji we re bibêje.

Hûn pirr li qelbên xwe miqate bin. Wan tim bi zikrê Xuda nû bikin. Lewra qelb zû jengar digrin. Hefsarên nefsên xwe jî bixin destên xwe. Lewra ew pirr har in. Heke hûn ji arzûyên xirab ên nefsên xwe re nebin asteng, ewê rojekê we her di kendalekî tirsnak de bigindirîne.

Heta ku eybên we hebin heta hûn dev ji eybdarkirina dîgeran bernedin, hûn nabin xwedî îmana kamil. Naxwe berî hûn li eybên dîgeran meyzînin, pêşî eybên xwe di ber çavê xwe re derbas bikin; bi sererastkirina eybên xwe dest bi kar bikin!

Gelî mirovan! Qur'ana Pîroz ji bo mûmînan şîfa ye, ji bo mûtteqîyan rêber e. Kî, bi xebera wê bike, digihe hîdayetê û rêya rast dibîne. Kî berê xwe ji wê vegerîne jî bedbext dibe û ber bi felaketan ve tê kişkişandin.

Hey Însan! Tu yê bi tena serê xwe bimrî, bi tena serê xwe ji nû ve sağ bibî, bi tena serê xwe biçî ber hesabê!

❁

**Malik bin Dînar** -quddîse sirruh-

Ji bilî van herdu tiştan wekî din sefa (xweşî) li dinyayê nema:

1. Çavpêketina birayan û sohbetkirina bi wan re ye,

2. Rabûna nimêja teheccudan û di wî wextê feyzdar de têr têr meşğûlbûna bi zikr û Qur'anê ve ye.

❁

**Caferê Sadiq** -quddîse sirruh-

Dema tu amelekî salih bikî, wî di çavê xwe de biçûk bike û wî veşêre. Lewra heke tu wî biçûk bibînî ew te nabe ucbê (xwe ecibandinê). Heke tu wî veşêrî, kêmasîya wî temam dibe, yanî fezîleta wî zêde dibe. Heke tu lezê bikî, tu demek berî demekê zûtir digihîjî wî amelê salih. Lewra dibe ku nefs xwe bi ber lawazîyê ve berde hingê dibe ku ew wî dereng bixe, yan jî te ji wî vegerîne.

Heke tu tiştekî ku li xweşîya te naçe, ji birayê xwe yê mûmîn bibihîzî, bi israr bihizre ku dibe wî mazeretek hebe. Heke tu (ji wî re) mazeretekê peyda nekî, bibêje; belkû mazereteke wî heye, lê min ew fehm nekiriye û eyba wî veşêre!

❁

**Sufyanê Sewrî** -quddîse sirruh-

Însan, divê îlmê ji bo vê tehsîl (hîn bibe, bixwîne) bike; da ku pê xwe ji hatina li hemberî Xuda biparêze, fermanên wî bîne cih, ji wî bitirse. Çêtirbûnîya fezîleta îlmê ji vê tê; ew xwediyê xwe dike xwedî exlaq û xwedî hestên bilind. Heke wiha nebûya, ew jî dibû wekî tiştên din.

Ji bo te çûna Xurasanê ji bo teblîğê; ji mayîna te li dora Mekkê (ji bo îqametê) bi qezenctir e.

Ji bo îlmê şertê pêwîst ê pêşî; gera li rêyên dîtina wî ye. Piştî ew were dîtin û bidestxistin jî amelkirin tê. Piştre huşbûn û tefekkur tê.. Paştir jî bi nêrîna îbretê meyzandina li kaînatê tê..

❁

**Cuneydê Beğdadî** -quddîse sirruh-

Sohbeta bi Xuda re, yanî pevrebûna bi wî re, bi edebeke sipehî û bi dewamkirina halê heybet û mûraqebê çêdibe;

Sohbeta bi pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re, bi şopandina sunneta wî û sîyera wî çêdibe;

Sohbeta bi ewlîyaullah re, bi îhtîram û xizmetê çêdibe;

Sohbeta bi ehl û eyalan re bi exlaqê xweş çêdibe;

Sohbeta bi birayan (birayên terîqet û dozê) re, bi rûkenî-bûnîya daîmî û bi keyfxweşkirina wan çêdibe;

Sohbeta bi ewaman re jî bi dûa û merhemetê çêdibe.

❁

**Îmam Ğezalî** -quddîse sirruh-

Kurê min! Di van hersê îbadetan de bila bi awayekî bêqeyd û şert qelbê te şîyar be, bila aqilê te û qelbê te li cihekî din nebe! Ew hersê îbadet jî ev in:

Dema tu Qur'ana Pîroz bixwînî, dema tu Rebbê xwe zikr bikî û dema tu nimêj bikî. Di van hersê halan de bîstikekê jî aqilê xwe û dilê xwe nede cihekî din. Jibîr neke ku tu li hizûra Xuda yî! Bi berevajî vê, heke berê te li qiblê be û aqilê te li pey tiştên din be, qîmetê vê lawaz dibe. Berê xwe bi K'abê ve, bi wê mabeda pêşîya ku Îslam lê hilatiye, girêbide û qelbê xwe bi Hezretê Ellah ve girêbide! Ji bilî vê jî heke tu dixwazî bibî ji arifan; bila huşbûna te fikr, awira te îbret û daxwaza te îtaet be. Lewra ev hersê xeslet, elametê arifan e.

Kurê min! Heta tu bibêjî bes xwe ji deynê evda biparêze! Ji ber qurûşek deyn, wê sewaba gellek îbadetê qebûl-bûyî, here. Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- li ser mirovê deyndar mirî, nimêj nedikir. Meqsûda wî ji vê ew bû ku zengînî bîne merhemetê û bike ku ew li deynê xwe bibûre. Mûmîn dema bikeve bin deynan, ew ji fizûlî nakeve bin deynan. Lêbelê heke ew ji ber zerûretê bikeve bin deynan û bi nîyeta bi şûn de edakirina wan deynan wergire jî, Ellah Teala ji wî re dibe arîkar. Heta heke ew hewl bide deynên xwe bide, lêbelê heke ew berî deynên xwe bidê, bimre, li qiyametê Xuda ji wî re dibe arîkar.

Li ser belayê jî şukirkirin, lazim e. Lewra ji kufr û gunehan pê ve belayeke din nîn e ku di navê de qencîyeke tu nizanî, nebe! Xuda, ji te bêhtir bi qencîya te dizane. Gellek tişt hene, tu wan şer zen dikî haleveku ew ji bo te xêr in. Gellek tişt hene jî tu wan xêr zen dikî, haleveku ew ji bo te şer in. Naxwe rêya bi selamettirîn, razîbûna te bi teqdîra îlahî ye, li ser her halî jî «şukir» gotina te ye.

Kurê min! Heke cîhetek hebe ku divê tu zehf zêde lê miqate bî, ew jî ew kes in ku tu bi wan re radibî û rûdinî. Vê baş bizane ku sevîkeke sağlema sêvan, sêveke rizî ya di nav xwe de bi sağlem nake. Lêbelê sêveka rizî, tevan bi xwe re dirizîne. Ji lewma tim û daîm bi salihan re rabe û rûne!

Hevalê baş jî dişibihe wî yê ku rûnê gulê difiroşe; ya tu jê dikirrî, ya ew hinekê li te dike, yan jî heke nebe nebe heta tu li cem wî bî wê bêhna xweş ji te were. Însan bi hezkirîyên xwe re dibe. Tu li dinyayê ji kî hez bikî û bi kî re rabî û rûnî li qiyametê tu bi wî re heşr dibî. Naxwe li ser çûna sohbeta alimên ku bi îlmê xwe amel dikin û li ser çûna sohbeta salihan dewam bike!

Kurê min! Li heyatê her tişt bi teqsîma (dabeşkirina) Xuda ye. Xuda hinek zengîn kirine, hinek feqîr kirine, hinek sağlem kirine, hinek seqet kirine, hinek alim kirine, hinek jî cahil kirine. Ahenga dinyayê wiha tê temînkirin. Dema tu mirovên ji xwe ketîtir bibînî, serxweve neçe û wan biçûk nebîne!

Çêdibû ku tu di şûna wan de bûya, ew jî di şûna te de bûna. Ha tu vê bifikre û bi hejaran re bibe heval! Hewl bide daîm tu li hemberî wan nefsbiçûk bî! Sergiranîya însanî û îslamî ya xwe biparêze! Dilşadî bes wiha tê qezenckirin. Heke tu li dinya û axretê hizûrê dixwazî, ti kesî neêşîne! Dema tu yekî ji xwe gênctir bibînî, bi fikra ku "*gunehê vî ji yên min hindiktir in*" lê; dema tu yekî ji xwe kaltir bibînî bi fikra ku "*sewabê vî ji yên min zehftir in, ew bi terefên xwe yên ku ez nizanim ji min çêtir e*" li wan binêre!. Dema tu alimekî bibînî, bifikre, bibêje; "*îlmê vî heye, ewê xwe xilas bike*" lêbelê dema tu yekî ji xwe cahiltir bibînî bifikre, bibêje; "ev nizane, Xuda wî efû dike!" Heta dema tu kafirekî bibînî, ji ber ku nefesa dawîn ne dîyar e, bibêje; "*heke Xuda ji bo vî hîdayetê bi nesîb bike, wê hemû gunehên wî werin efûkirin û dibe ku ew wek pîr û pak here hizûra Xuda. Gelo wê nefesa dawîna min çawa bibe*" û encama xwe bifikre! Tu çi qeder xwe nas bikî û çi qeder xwe kêm bibînî, tu li cem Xuda ew qeder cih û meqam qezenc dikî.

Kurê min! Heta ji dest te were îhtiyacên bira-dînên xwe temîn bike! Lewra Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Kî, îhtiyaca birayê xwe yê mûmîn temîn bike, Xuda jî îhtiyaceke wî temîn dike.*"[713]

Di hedîseke şerîfa din de Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha dibêje:

"*Kî eyba mislimanekî binixumîne, Xuda jî li dinya û axretê eyba wî dinixumîne.*"[714]

Ew kesê ku aqilê wî hebe bila ji nefsa xwe re bibêje; sermayê min temenê min tenê ye. Min tiştekî din nîn e. Ev sermaye, ew qeder bi qîmet e ku her nefesa tê dayîn, êdî ew bi ti awayî nayê bidestxistin. Nefes bijimar in û ew her kêm dibin. Naxwe nefsên xwe baş binirxîne û li vê dinyaya fanî binêre her wekî ku tu sibê dimrî. Hemû endamên xwe ji heramîyê biparêze û xwe bi teqwayê ve bigre.

Xudayê min! Temenê me bi dilşadî bi dawî bike. Gihiştina rizaya îlahî û cemalûllahê bike nesîbê me! Sibeh-êvarê me ji efîyetê cuda neke! Teqwayê ji bo me bike zad, berê tewekkul û pêbawerîya me bide ser xwe! Me li ser rêya heq sabit bike! Bes tu tenê ji îbadetê re layiq î. Ez te ji sifetên nuqsan

713. Buxarî, Mezalim, 3.
714. Mûslim, Birr, 72.

pak didêrim. Ji ber ku min nekariye bi awayê layiq ji te re îbadetê bikim, ez bûme ji zaliman.

Hemd ji Rebbê aleman Xudê Teala re be; selat û selam li ser Fexrê Cîhanê Mezinê me Mûhemmed Mûstefa bin!

❁

**Ebdûlqadir Geylanî** -quddîse sirruh- (jidêbûnî: 1077, mirin: 1166)

Hey Kur! Teqwa ji te re pêwîst e. Bi vê sedemê hewl bide tu îcabên teqwayê bînî cih ku qelbê te ji dijminên hundurîn û xuyên mekroh xilas bibe. Ji bo li ser xêrê îstîqameta xwe bigre.

Hey Kur! Dema tu tiştên dinyayî berhev bikî, nebe wekî wî darbirr ê ku bi şev êzingan kom dike lêbelê nizane ka çi tê, dikeve destên wî. Li wê tişta dinyayî ya ku dikeve destê te diqqet bike, gelo ew helal e, yan heram e, rewa ye, yan jî ne rewa ye. Di hemû kirinên xwe de bi taveroja tewhîd û teqwayê re bibe.

Hey Kur! Amel-kirina bi Qur'anê, wê te ji bo cihê Qur'anê bilind bike; te li wir bide rûnandin. Amelkirina bi sunnetê jî, wê te ji Pêğemberê Xuda nêzîk bike. Vêca tu, bi himmeta qelbî û manewî ya pêğemberê Xuda -sellel-lahû eleyhî we sellem- bîstikeke tenê jî ji hawîrdora qelbên dostên Xuda cuda nabî. Yê ku qelbên dostên Xuda xweşik dike, her Ew e.

Hey Kur! Xwarina heramîyê qelbê te dimirîne. Xwarina helalîyê jî qelbê te îhya/sağ dike. Luqme heye ku te bi dinyayê ve meşğûl dike, luqme jî heye ku te bi axretê ve meşğûl dike. Dîsa luqme heye ku dilê te dixe Aferînerê dinya û axretê.

Hey Kur! Di babeta cîhada li dijî nefsa te de kî ji te re bibe arîkar, tu hevaltîyê bi wî re bike. Here sohbeta wî. Kî ji bo harbûnîya nefsa te bibe arîkar, tu hevaltîyê pê re neke. Pêşî bi nefsa xwe re meşğûl bibe, ji nefsa xwe re bifeyde bibe û nefsa xwe rast bike. Piştre bi dîgeran re meşğûl bibe. Nebe wekî wî mûmê ku ronahîyê dide dîgeran û xwe dihelîne û xilas dike.

Hey kesê ku dixwaze di rêya Xuda de amelên sipehî bike! Bi îxlas bibe! Heke na, te xwe hewante westandiye.

Îrşadkirina însanan, ne bi peyvê, bi bawerîyeke xalisa jidil û bi îştiyaqê tê bicih. Dîsa ev hemû; ew encam in ku bi xelwet, îbadet, zikr, rîyazat û mûraqebê werin girtin. Heke na, ne ew encam in jî ku bi hinek bizavên ku ji

şeklî û rîyakarîya zahirî derbas nabin û ew bi ti awayî li rûh nayên emilandin, werin bicihanîn. Bi vê sedemê rêwîyê rêya Xuda, divê zimanê wî û qelbê wî, hundurê wî û derveya wî, peyva wî û ya dilê wî yek bin û ew heman tiştî terennum bikin.

❀

**Ahmed er-Rîfaî** -quddîse sirruh- (jidêbûnî 1118, mirin, 1182)

Gelî mezinan! Hewl bidin ji ewlîyaullah nêzîkbûnê peyda bikin. Lewra ewê ku ji welîyê Xuda hez bike, wî ji Xuda hez kiriye; ewê ku dijminahîya wî bike, wî dijminahîya Xuda kiriye.

Li ser zikrê dewam bikin. Lewra zikr, ji bo wusleta îlah meğnetîs e, ji bo nêzîkbûna ji îlah, tayekî sağlem e. Ewê ku li ser zikrûllah dewam bikin, bi Xuda xweş dibin. Ewê ku bi Xuda xweş dibe, bi Wî gihaye. Bicihbûna zikrê di qelb de bi bereketa sohbetê mûmkin dibe. Lewra însan di rêya dostê xwe de dibe.

Tefekkur, yekem amelê Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Çawa di pêşîya hemû ferzan de îbadetê wî ji hizirîna mexlûqatên Xuda û hizirîna nîmetên wî îbaret bûye. Naxwe hûn jî baş xwe bi tefekkurê asê bigrin û wê bi wesîleya îbretê bikin.

Diqqet bikin! Wekî bêjingê nebin, ardê hûr nerijînin û kelpika wî ji xwe re nehêlin. Zinhar dema hikmet ji devê we dirije, bila di qelbên we de hîle û fesadî nebin. Heke na, bi mûcibê vê ayetê; “**ma hûn şîreta qencîyê li mirovan dikin û xwe jibîr dikin?**”[715] wê hesab ji we were pirsîn.

Qelbên xwe tertemîz bikin, lewra temîzîya qelb ji temîzîya ser û bedenê hê giringtir e. Ji xwe Xuda li cilan nanêre, li qelban dinêre. Tixûbê îstîqametê li ber çavan bigrin û li ğeyrê Xuda negerin.

Gelî mezinan! Ewê ku bi tewazû û sikûnetê li derî dixe, derî jê re tê vekirin. Ew ji bo hundur tê qebûlkirin. Ewê ku wek stûxwehr biçe hundur, bi îzzetê tê bimêhvankirin.

❀

715. Beqere, 2/44.

**Ebdûlqadir Ğucdevanî** -quddîse sirruh- (mirin 1189)

Hey Kur! Ez wesîyet li te dikim ku tu di her halê xwe de bi îlm, edeb û li ser teqwayê bibî!.. Berhemên mirovên ku derbas bûne, çûne bixwîne û di rêya ehlê sunnet wel-cemaetê de here! Fiqh û hedîsê hîn bibe û goşe bi goşe ji sofîyên cahil bireve! Nimêjên xwe, mûheqqeq bi cemaetî bike! Heke di qelbê te de meyla şohretê hebe, nebe mela û mûezzin! Heta ji te were ji şohretê dûr bibe! Di şohretê de afet heye. Bila çavê te di meqaman de jî nebe; tim û daîm xwe li jêran bigre! Ji bo karê ku te taqet jê re nebê, nebe kefîl! Xwe nexe nav wî karê xelkê ku te elaqedar nake! Bi rêvebirên fasiq re nerabe û nerûne! Di her babetê de hevkêşîyê mûhafeze bike! Ji pîvana rewa nebûre û xwe zehf bi ber guhdarîkirina li dengê xweş ve bernede ku ew rûhê te reş bike û ew di dawîyê de nîfaqê diwelidîne. Dema wiha ye, tu dengê xweş jî înkar neke ku bi wî ezan û Qur’an, rûhan îhya dikin.

Hindik bixwe, hindik biaxive, hindik raze; û wekî ku tu ji ber şêran birevî wisan ji ber ğafilan jî bireve! Di zemanên fitnê de bi tenê-bûnîyê tercîh bike, xwe ji zanayên ku bi îcaba menfîata xwe fetwa didin û dibin sebeb ku dîn sivik were girtin, ji zengînên meğrûr (serxweveçûyî) û ji cahilan dûr bigre! Malê helal bixwe, xwe ji tiştên bişubhe biparêze û di zewacê de li teqwayê miqate be. Di rewşeke berevajî de tu yê bi dinyayê ve werî girêdan û tu yê di oğira wê de dînê xwe xirab bikî...

Pirr nekene; nexasim li kenîna bi qehqehe diqqet bike! Pirr kenîn, qelb dimirîne. Lêbelê tebessumê jî ji dest xwe bernede.

Bi çavê şefqetê li her kesî binêre û ti kesî biçûk nebîne! Derveya (zahirê) xwe zêde zêde nexemilîne ku avabûnîya derveyî ji wêranîya hundurîn tê. Mûnaqeşe neke, tiştekî ji ti kesî nexwaze, mûsteğnî bimîne, bi qenaetê zengîn bibe, weqûrîya (sergiraniya) xwe biparêze!

Tu jî li hemberî yên ku emekê wan li ser te hebin û li hemberî yên ku tu terbîye kiribin, weqûr bibe, bi malê xwe û canê xwe xizmetê ji wan re bike û bi halê wan hevhal bibe! Ew ğafilên ku wan şermezar dikin, hîç serfiraz nabin. Meyla xwe nede dinyayê û meyla xwe nede ğafilên ehlê dinyayê jî!

Divê tim û daîm dilê te mehzûn be, bedena te ji bo evdînîyê xurt be, çavê te hêstirbar bin û qelbê te jî tenik be. Bila karê te îxlas be, bila dûaya te penahxwazî be, bila cilên te metewazîtî bin, bila rêhevalên te dostên Heq bin,

bi sermayê te îlmên dînî yên zahirî û batinî bin, bila mala te mizgeft be, bila nêzîkên te jî dostên Xuda bin!..

❁

**Ferîduddîn Ettar** -quddîse sirruh- (jidêbûnî, 1119, mirin, 1220)

Uzrên mirovên ku te diêşînin qebûl bike. Ewê ku xelkê diêşîne Xuda jê hez nake. Xuyekî wiha, ji bo yekî dîndar ne layiq e. Ewê ku bi zulimî qelbekî birîndar bike, dibe wekî ku bedena xwe birîndar kiribe. Ewên ku eybên xwe dibînin di rûhên wan de hêzek dîyar dibe.

Elametên ehmeqtîyê ev in:

Nedîtina eybê xwe û gera li qusûrên dîgeran e. Digel ku tuxmê nemerdîyê li dilê xwe reşandibe jî hêvîkirina comerdîyê ye.

Ew kesê ku bi exlaqê xwe xelkê dilxweş nake, li cem Xuda ti qîmetek ji wî re nîn e.

Here serdana nexweşan, lewra ev, sunneta Pêğember e. Heke ji dest te were avê bide tîyan. Di dîwanan de xizmetê ji mirovan re bike. Hal û xatirê sêwîyan bipirse ku Xuda te ezîz bike. Lewra girîyê sêwîyekî ji bo bîstikekê jî têrê dike ku Erşê ‘Ela bilerizîne. Zalimê ku sêwîyekî bigirîne, ji bo agirê cehennemê dibe êzing. Ewê ku sêwîyekî nexweş keyfxweş bike, ew dibe ku ji bo xwe derîyê cennetê vekiriye.

Tu di rêya Xuda de çi bidî, ew dibe malê rastî, yê te. Ew malê ku bi şûn de mabe, hesabê wî heye.

❁

**Mûhyiddîn Îbnû’l-Erebî** -quddîse sirruh- (jidêbûnî 1165, mirin 1240)

Heke tu qelbê xwe ji zikrê Xuda re hîn bikî, bêşiwar wê qelbê te bi nûra ku zikr bidîyê nûrdar bibe. Ew nûr, wê çavê qelbê te veke.

Bi bendeyên Xuda re bi şefqet û merhemetê mûamele bike. Merhemetê bi ser hemû mexlûqatan de zehf birijîne. Wiha nebêje: “Ev gîya ye, bêcan e. Feyda wî nîn e.” Erê feyda wan heye û gellek xêra wan jî heye. Mexlûqî ji halê wî re bi tena serê wî bihêle û bi merhemeta aferînerî merhemetê li wî bike.

Ewê ku hatibe ji te tiştekî dixwaze, wî destevala bi şûn de neşîne, çendan bi xebereke xweş be jî dilê wî bistîne, rûkenîyê jê re şanî bide. Hizr pê bike ku ewê di dahatûyê de çav li Xuda bikeve.

Bila ji bo tiştê dinyayî ğeyrê Xuda te ji bo xwe neke kole. Lewra tu sade koleyê Xuda yî ku ew te wek kole qebûl dike.

Divê tu ji bo bendeyên mûmîn ên Xuda bi awayê selam kirina li wan, xwarin dana wan û dîtina karên wan hezkirina xwe ji wan re şanî bidî. Vê baş bizane ku temamê mûmînan, wekî yek însanî, yek bedenê ne.

Xwe ji bo (çûna) cemaetê hîn bike. Hewl bide tu ji tirsa Xuda bigrî. Xwe bi werîsê Xuda bigre. Dilê xwe bixe wan tiştên ku Xuda ji wan hez dike û bi wan razî dibe.

❁

**Hezretê Mewlana** -quddîse sirruh- (jidêbûnî 1207, mirin 1273)

Xudê Teala, pêğember û welî wek rahm ji bo aleman şandine dinyayê. Ji lewma ew bêwestin û bêsistbûn şîretan her li xelkê dikin. Ew ji bo mirovên ku li van şîretên wan guhdarî nakin û wan qebûl nakin jî wiha lavlavê dikin, dibêjin; "Ya Rebbî! Tu, li van were rahmê, derîyên rahma xwe li ber van negre!"

Tu aqilê xwe bide serê xwe û ji dil û can li şîretên welîyan guhdarî bike! Guhdarî bike û ji kula xwe, ji tirsa xwe xilas bibe, bigihe rehetîya manewî, bigihe emînîyê!

Firsendê ji dest xwe bernede, nekeve tereddudê, xwe bi dawa wan mûmînên kamil bigre ku xwe ji xapxapokên vê alema fanî selixandine û xwe bi temamî ji Heq re teslîm kirine ku tu ji van fitneyên dinyaya xirab-bûyî yên axir zemanê xilas bibî!

Peyvên welîyan ji ava jîyanê tije ne, wekî çemekî zelal û safî ne. Dema firsend hê di dest de ye têr têr jê vexwe û bila di dilê te de çîçek û gulên manewî bel bibin, vebin.

Mezino, zanibe ku edeb, wekî rûhê di bedena însanî de ye. Di esilê xwe de edeb, nûra çav û dilê dostên Xuda ye. Heke tu dixwazî serê şeytên biperçiqînî, çavê xwe veke û bibîne ku qatilê şeytanî edeb e.

Çavê xwe veke û li Qur'ana Pîroza ku ji vî serî heta bi wî serî kelamê Xuda ye, binêre! Hemû ayetên Qur'anê edebê talîm dikin, edebê hîn dikin.

Tu her tiştê xwe, malê xwe û milkê xwe bide û dilekî bistîne. Bistîne û bila ew dil, di qebrê de, di wê şeva ripûreş de ronahîyê bide te, nûrê bide te..

Bi însanekî dostê heq re gavekê pevrebûn, bedela temenekî ye. Mûyekî ku ji wî dikeve jî di bedela madeneke qîmetdar de ye. Lêbelê dijberê dostên Heq mirovên wisan dilhişk jî hene ku tu dev ji axaftina bi wan re û pevrebûna bi wan re berde, nedîtina wan û xwe dûrkirina ji wan, bedela milkê cîhanê ye.

Min ji dilê xwe re got; "li pêş-bûnê arzû neke, bibe merhema lutfê. Nebe strîyê ku diêşîne. Heke tu naxwazî ji ti kesî xirabîyek ji te re were, nebe peyv-xirab, nebe fêrkarê xirabîyê, nebe hizrpêkerê xirabîyê. Bi her halê xwe di nav amelê salih de bibe."

❁

**Îbrahîm Desûqî** -quddîse sirruh- (mirin, 1277)

Kurê min! Ya ji te re lazim ew e ku tu karibî dûaya zumreya welîyan ji bo xwe bigrî. Tu arzû bikî ji bo teberrukê bigihîjî himmeta wan.

Hey kesê ku Qur'ana Pîroz dixwîne û wê jiber dike!.. Ji ber ku te ew xwendiye û jiber kiriye, zêde pesnê xwe nede.. Li halê xwe binêre: Gelo tu bi îcaba wê amel dikî? Yan jî tu bi îcaba wê amel nakî?

Hey kurê min! Meşğûlîyeta bi tiştên bêfeyde yên wekî cedel, neqil û peyvên avzêrkirî terk bike, bibe ehlê sikûtê. Îxlasê bibijêre, di vê rê de amelê salih bike û bi xebera nefsa xwe neke.

Bi wî kesî re rûne ku şerîat û heqîqet di peyva xwe de kom kiribe. Vê jibîr neke ku di vê rê de ew kesên zehf arîkarîya wan ji te re çêbibe, wê kesên wekî van însanan bin.

Kurê min! Ez dixwazim tu daîmî bi sunnetê amel bikî.. Di vê rê de tu esasê edeba lazim jî rîayet bikî.

Divê tu cesûr bî. Divê tu ne ji wan tirsonekan bî ku ji siha xwe jî ditirsin. Divê ti tengasîyek te di gava pêşî de li erdê nexe.

Bi hezkirina Mewlana tije bibe; heta bi wî re di halê wecdê de bibe.

Kurên min! Heke ji bo ğeybetkirinê tu li yekî digerî; ğeybeta bavê xwe û dêya xwe bikin. Lewra ew; ji bo wergirtina qencîyên we ji dîgeran layiqtir in.

Xudê Teala di şev û rojekê de heftê û du caran li qelbê bendeyên xwe dinêre. Naxwe qelbê xwe temîz bigrin, xweşik û berraq bikin. Lewra ew der, nezargeha Rebbê we ye.

Hey birayê min! Zinhar zen neke ku tu bi tena serê xwe tiştekî bikî. Zanibe ku; dema tu rojî digrî, Xuda ew bi te daye girtin, dema tu nimêj dikî, Xuda ew bi te daye kirin, dema tu karekî dikî, Xuda ew bi te daye kirin. Heke tu bi dereceya teqwayê gihabî, Xuda tu pê dayî gihandin, heke tu ji bo tiştekî maddî-manewî bûbî mezher, Xuda tu bi wî kirî mezher.

Hey kurikê min! Heke amelê te bi qeder amelê însan û cinan hebe jî dîsa xwe ji gotina "ez" biparêze! Lewra Xuda, mirovên ku dibêjin; "ez" di nav bêçaretîyê de dihêle. Heke tu di doza ezperestîyê de bibî, dereceya maddî û manewî ya te dikeve, vê jibîr neke!

❁

**Behaeddîn Naqşîbend** -quddîse sirruh- (jidêbûnî, 1318, mirin, 1389)

Rêya me, rêya xilasîyê ye ku Xudê Teala ew nîşan daye. Lewra ev rê, bi xebera sunnetê kirin û şopandina eshabê kîram e. Bi vê sedemê rêya me jî di zemanekî hindik de gellek qezencê dide bidestxistin.

Rêya me, rêya sohbet û mehebbetê ye. Wekî ku rêya eshabê kîram jî sohbet e.. Xêr û bereket, di pevrebûnê de ye; pevrebûn jî bi sohbetê dibe. Dibe ku di xwe kişandina tenê-mayînê (înzîwayê) de tehlûka şohretê jî hebe, şohret jî afet e.

Ew kesên ku di rêya me de bin, divê li van hersê tiştan diqqet bikin:

**Ya yekê**; Edeba li hemberî Xudê Teala ye. Yanî divê însan bi zahirê xwe û batinê xwe di nav evdînîyê de bibe. Divê ew hemû fermanên Xuda bîne cih û xwe ji qedeğeyên wî biparêze. Divê ew ji bilî Xudê Teala her tiştî ji dilê xwe derîne û nîmetan di rêya Xuda de seferber bike.

**Ya duduyan**; edeba li hemberî pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ye. Ev jî; di îbadet, mûamelat û hemû bizavan de bi hezkirin bi xebera wî kirin e.

**Ya sisêyan**; edeba li hemberî wî dostê Heq e ku wî rêya rast ji te re şanî daye.

Ew xureka ku were xwarin, yan xwarinek, her çi dibe bila bibe, heke ew bi ğefletê, bi hêrsê, yan jî bê dilê xwe hatibe hazirkirin û hatibe tedarikkirin, di wê de xêr û bereket nîn e. Lewra nefsê û şeytên rêya xwe di wê de dîtine. Ew kesê ku xwarineke wiha bixwe, bêşiwar wê encamek were meydanê ku ewê feyz û hizûra wî her xirab bike. Ew xwarina helal û xwarinên xalis ên ku bê noqbûna di ğefletê de hatine çêkirin û bi hizirîna Xudê Teala têne xwarin, ji wan xêr tê meydanê. Sedemê ku însan di kirina amelê salih û xalis de biser nakevin; di xwarin û vexwarinê de diqqet nekirina wan li heram, tiştên bişubhe û heqê evda ye. Her çi hal dibe bila bibe, bi taybetî di nimêjê de di halê xuşû û hizûrê de bûn, bi zewqê û bi barandina hêstirên çavan kirina nimêjê; bi xwarina luqma helal, bi di bîra xwe anîna Xudê Teala pehtina wê û bi xwarina wisan her wekî ku li hizûra wî be, ve bend e. Ew kesê ku bedena xwe bi luqma heram xwedî kiribe, ew ji nimêjê hest bi neşweyekê nake.

Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vê îfadeya xwe de: "*Nimêj mîraca mûmînî ye*."[716] dereceyên nimêja heqîqî îşaret kiriye. Naxwe ew kesê ku radibe ser nimêjê, dema tekbîra îftîtahê dibêje, divê ew ezameta Xudê Teala û bilindbûnîya wî bifikre û di xuşû û hizûrê de bibe. Divê ew wisan bibe ku vî halê xwe bike îstiğraq, yanî bigihîne halê ji xwe çûnê. Zirweya vî halî di pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- de ye.

Heqîqeta gotina peyva "*La îlahe îllellah*" ji Xudê Teala pê ve çi hebe, hîç yek ji wan di qelb de bi pût nekirine. Îfakirina hukmên dînê Îslamê, yanî bicihanîna fermanên wî û xwe parastina ji qedeğeyên wî; terkkirina heraman, tiştên bişubhe û heta terkkirina zêdehîya mûbahan, xwe dûrkirina ji ruxsetan, bi miqdarê zerûretê tenê bikaranîna mûbahan, bi temamî nûr û sefa ye. Di heman demê de wasîteyek e ku însanî bi dereceyên welîtîyê digihîne. Însan bi van bi dereceyên welîtîyê digihe. Temamê mirovên ku ji van dûr dimînin, ji ber ku li van diqqet nekirine, (ji welîtîyê) dûr dimînin û li pey arzûyên xwe diçin. Heke na, feyza Cenabê Heq her gavê tê.

❀

**Mewlana Xalidê Beğdadî** -quddîse sirruh- (mirin 1826)

Ez li te tewsîye dikim; tu ji Xuda re li ser taet û teqwayê bibe, tu li kuderê dibî bibe ezîyet û cefayê her nede mirovan, bi taybetî di Heremeyna Şerîfeynê de hê zêdetir bi titîzî tevbigere.

716. Suyûtî, Şerhu Îbn-î Mace, I, 313.

Heke ew ğeybeta te bikin jî dîsa tu ğeybeta ti kesî neke. Tiştekî ji malê dinyayê hîç ji ti kesî nestîne. Ew tiştê ku şerîatê standina wî helal kiribe, wî bistîne û wî jî di rêyên xêrê de xerc bike. Dema birayê te yê mûmîn di rewşa birçî û hejarîyê de be, ji bo şehweta xwe xercîyê neke û bi vê lezzetê nebîne. Bi ti awayî derewan neke. Hîç ti kesî heqîr/biçûk nebîne. Hîç nefikre ku nefsa te ji ti kesî çêtir be.

Di îbadetên qelbî û bedenî de hemû hêza xwe sarf bike. Li kêleka vê jî bi nefsa xwe fikra "hîç ti zemanî te xêreke meqbûl nekiriye" bide qebûlkirin. Lewra rûhê îbadetan nîyet e. Nîyet jî bes bi îxlasê mûmkin e. Heke îxlas ji bo mirovên ji te mezintir pêwîst be, vêca ewê ji bo te çawa ne pêwîst be. Ez bi Xudê Teala sûnd dixwim; ez bawer nakim ji roja ku dêya min ez anîme dinyayê û heta bi vêga min xêreke meqbûl û mûteber kiribe ku li cem Xuda hesabê wê neyê pirsîn.

Heke tu nefsa xwe di hemû karên xêrê de wek îflaskirî nabînî, ev nuqteya dawîtirîna cehaletê ye. Heke tu xwe wek îflaskirî dizanî jî dîsa hêvîya xwe ji rahma Xuda qut neke.

❁

**Mûsa Efendî** -quddîse sirruh- (jidêbûnî, 1918, mirin 1999)

Kemal û alema dilî ya mûmînekî di bizavên wî de tê raxistin. Çend şîretên ku di serê van sipehîtîyan de tên jî wiha ne:

Tim û daîm dilnizm bûne, zanîna qîmetê zemanê xwe û nefesên xwe ye û îsraf nekirina wan e, hezkirina ji evdên Xuda ye û bi wan re neketina rikeberîyê ye, bi sewîya dînî ya mûxatebên xwe bi wan re mûamele kirine, veşartina qebahetan e, diqqetkirina li helal û heramîyan e, mezindîtina însanî ya wan guneha ye ku herkes wan biçûk dibîne.. Lewra ewê ku gunehê xwe biçûk dibîne, -haşa- wî Cenabê Heq biçûk dîtiye.

Bila em di rêya Mewlayê xwe de wextên xwe yên seheran bi nimêj, zikr û dûayan bixemilînin. Di serî de jî bila em di xizmeta ferdên malbata xwe de û di xizmeta mezinên malbata xwe de bibin. Bila em ulfeta xwe bi dinyaparêzan re kêm bikin û bila em bi salihan re rabin û rûnin. Bila em di xizmeta lêzimên xwe yên dîger û hewcedaran de bibin û bila em bi zimanê xwe û bi maddîyata xwe arîkarîya wan bikin. Ya ji van tevan jî mûhîmtir bila em ji helalî û heramîyê re titîzîyê şanî bidin. Ji bilî van jî bila em di karên çarçî-bazarê de bi diqqet hereket bikin da ku em nebin; me di evdînîyê de fîre dabe.

Hemû xeta, jibîrkirin, şaşomaşo bûn; di wextên em ji zikrê ğafil de têne meydanê. Ew însanê ku halê zikrê didin dewamkirin, di wan de kedera dinyayê, ğemgînîya wê û heta ji lazimîya wê zêdetir keyfxweşîya bi wê jî peyda nabe. Hizûra daîmî, sexawet û şefqetkirina li mexlûqatan, cihê wê valahîyê tije dikin. Yanî hezkirin, daîmî hez bikin... Hezretê Ellah Teala, wî bendeyê xwe yê ku ji wî hez dike, di deryaya hezkirinê de noq dike. Êdî ew kes bi qeder ku Cenabê Heq wî dide hezkirin ji wan kesan hez dike ku ji hezkirinê re layiq bin.

Însanek ji kîjan civakê be divê ji bo rizaya Xuda xweşik xizmetkirina ji wê civakê re wezîfeyeke pirr biqîmet zanibe. Ew kesê ku ji bo jîyana civakekê, ji bo întîzama wê û ji bo geşepêdan û refaha wê xizmet dike, maneya vê ew di nav wê civakê de xwedî dewlemendîyeke pirr biqîmet e. Ji lewma ecr û mûkafata wî jî ew qeder mezin e.

Di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

“**seyyîdul qewmî xadîmûhûm**”

“*Kesê ku xizmetê ji civakekê re dike, (bi gihiştina ecr û mûkafatê) mezintirînê wan e.*”[717]

Gellek kes digel ku zehf berê xwe dane ser îbadet û taetê jî dîsa ew ji xesleta “Settaru’l-uyûb”ê ya Cenabê Heq, yanî eybveşêr û efûkarê qusûran re laqeyd dimînin. Bi vê sedemê wekî ku tam tê xwestin ew nikarin tereqqî bikin, bipêşkevin. Haleveku efûkirin û veşartina qusûran, yek ji mûhîmtirîn exlaqê xweş e. Çawa Hezretê Ellah Teala we Teqeddese, bêjimar qusûr û xetayên me bendeyên xwe diveşêre û efû dike, divê em jî wisan efûkar bin. Lewra ewên ku xwedî hezkirina Xuda ne, dizanin efû jî bikin.

Yek ji ev hemû jî di vê hengama dinyayê de û di nav hezar û yek cure meşğûlîyetan de bi Heq re bûn e. Ev halekî wisan xweş e ku bexşîşeke, yanî dîyarîyeke Cenab Heq ji bo evdê wî ye. Heke em karibin vê wezîfeya zehf ulwî teemmul bikin/bifikrin, hingê emê ji xapîna bi leystikên here-were’yên dinyayê jî xilas bibin.

nîmetên mezintirîn ên Cenabê Heq ji bendeyê wî re bi wî bendeyî dane zanîna bêçaretîya wî ye. Di rêya manewîyatê de belkû mezintirîn nîmeta ku me qezenc kiriye, dîtina me ya xetayên me ye. Fehmkirina min muflistîya min

717. Deylemî, Musned, II, 324.

li hemberî Rebbê min e. Bi vî awayî taqeta min nema ku ez bi dîtina xetayên ti kesî re meşğûl bibim. Hemd ji Xuda re be, ez di nav şukirê van tevan de me..

❁

**Ya Rebbî! Ji agirê mehebbetê yê di dilên dostên Heq de pişkekî ji me re jî lutf bike! Em bi himmeta manewîya dostên Heq perwerde bûne, vêca li ser îstîqametê bûna me ya bi îqaz, îrşad û nesîhetên feyzdarên wan jî ji me re bi nesîb bike!..**

**Amîn..**

# BEŞA ŞEŞEM

## Qisse û Îbretên Tesewwufî

“**Dostên Heq ku di Mewla de gihane navenda dostanîyê, ewê heta hetayê wek dostê hemû însanîyetê bimînin**.”

## QISSE Û ÎBRETÊN TESEWWUFÎ

Wekî ku di beşên berî vê beşê de jî cih bi cih me behs kiribû ku tesewwuf îlmek e, ji gotinê zêdetir hal e, yanî ji ber ku ew ji peyvê zêdetir bi mûkemmelîyeta cewher û bizavê ve elaqedar e, ew bi wan feyz û sipehîtîyan tije ye ku ji keş û hewaya dilî ya ewlîyaullah ji bo jîyanê dixuyên. Berî her tiştî ev sipehîtîyên ku di bin navên her wekî “qisse” û “menqîbe”yan de xwe di berpeyv û mûxateban de didin xuyakirin, wan roleke wisan bi bandor hildane ser xwe ku îmana mûxateban kamil dikin, exlaqê wan mûkemmel dikin, kehnîyên eşq û mehebbeta îlahî didin coşandin, hem jî bi alîyên xwe yên ku hestên ulwî yên her wekî merhemet, ef û dîgerğemîyê didin xwedîkirin jî îstîqametê didin bendeyan.. Çawa qisse dem bi dem di Qur’ana Pîroz de jî têne dîtin, bi taybetî ji ber ku ew bûyer ji nav jîyanê bi xwe ne, wê tesîra ku ew di dilan de îcra bikin li holê datînin û ew di rêya kamilkirina însanî de uslûbeke îlahî didin.

Ha em jî pişta xwe bi vê uslûba îlahî dispêrin, wekî ku me di beşên berî vê de jî cih bi cih mîsal didan, ew mijara ku em dixwazin di vê beşê de jî vebêjin, ev e; em dixwazin ji bo heqîqetan çend nimûneyên mûşexxes bidin. Bi vî awayî em hewl didin sade ne heqîqetên tesewwufî yên di satir û rêzexetan de, lêbelê em halê wan yên di sedr û singan de jî bidin xuyakirin. Ji bilî vê jî, me hewl daye babetên te’wîl, tefsîr û îqazên ku divê di hisseyên ev qisse di naveroka xwe de îhtîwa dikin de werin îfadekirin jî bi awayekî mûxteser û kurt xistine ber behs û vekolînê. Bi kurtî me di vê beşê de hewl daye, em çend dilopan ji deryaya fereha exlaq û fezîletan ya mûtesewwifan ji xwendevanên xwe re pêşkêş bikin.

## TEHSÎLA RASTÎ

Hezretê Samî Efendî, Fekulteya Hiqûqnasîyê ya Daru'l-Funûnê hê ji nû xilas kiribû. Dostekî Xuda ku halê sipehî û tertemîzê wî pirr ecibandibû, jê re wiha gotibû:

"-Kurê min, ev tehsîl jî sipehî ye, lêbelê tu li îkmalkirina tehsîla rastî binêre. Were, em te li mekteba îrfanê navnivîs bikin, li wir jî tu îlmên dil û sirrên axretê fêr bibe."

Piştre jî ev li axaftina xwe îlawe kiribû û jê re gotibû:

"-Kurê min, ez nizanim çawa perwerdê li wê mektebê dikin û çi didin hînkirin. Lêbelê tiştekî tenê heye ez wî dizanin; **dersa pêşîna vê tehsîlê neêşandine, dersa paşîna wê jî nehatin êşandine**..."

## HÎSSE:

Neêşandin hinekê hêsan e. Lêbelê nehatin êşandin, ne di dest mirovî de ye. Lewra ew karekî dil e. Ji lewma nehatin êşandin, bes bêtesîr mana wan tîr û xedengên jehdar ên ku ji mirinberan tên û di qelb de têne çikandin mûmkin e. Ev jî bi qeder wê sewîyê dibe ku însan bi tezkîya nefsê û tesfîya qelbî pê digihe. Dema pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- li Taîfê kevir lê dihatin barandin û wî heqaret didît, ferîşteyan jê re gotibû:

"-Ya Resûlê Xuda! Heke tu bixwazî, emê van herdu çîyayan bang bikin, ewê li hev bikevin û emê xelkê zalimê vê deverê bibin helakê."

Lêbelê ew pêğemberê mezin ê ku wek rahm ji bo aleman hatibû şandin, wî ev teklîfa ferîşteyan qebûl nekir û wî di nav hestên şefqet û merhemetê de rûyê mûbarekê xwe da terefê Taîfê û ji bo hîdayetbûna xelkê wê ev dûa kir.[718]

Hellacê Mensûr ku evîndarekî Pêğember bû, dema kevir li wî jî dihatin barandin, wî dûa kiribû û wiha gotibû:

"-Xudayê min! Ev nizanin, tu berî min li wan bibûre!"

Ev tehsîla rastî, hal ê qelbê selîm e ku ew jî di encama terbîya manewî de tê bidestxistin.

718. Binêrin. Buxarî, Bed'u'l-Xelq, 7; Mûslim, Cîhad, 111.

Dema pirsa sifetên qelbê selîm ji Ebû’l-Qasîm el-Hekîm dihatin kirin, wî wiha gotiye:

“Sê wesfên qelbê selîm hene:

**Yê yekê**, qelbekî ku naêşe,

**Yê duduyan**, qelbekî ku nayê êşandin,

**Yê sisêyan** jî ew qelb e ku ji bo rizaya Xuda qencîyê dike û hemberê wê jî hêvî nake...

Lewra mûmînek, heke ti kesî neêşîne, bi wera’ê; heke ew berê qelbê xwe bide Rebbê xwe û ji ti kesî neêşe bi wefayê; heke ew amelên salih bike û ti fanîyekî têde neke hevpar, bi îxlasê tê hizûra Cenabê Heq..”

Şair çi xweş dibêje:

*Di bağê cîhanê de ey evîndar ev e meqsûda îns û cin;*
*Ne bila ti kes ji te biêşe, ne jî bila tu ji ti kesî biêşî!*

❁

## METOD DI TERBÎYA MANEWÎ DE

Hezretê Şahê Neqşîbend, di tesewwufê de balê dikişîne ser babeta tesfîya qelbî û tezkîya nefsê û ziravîyên wan wiha eşkere dike:

“-Em mirîdî, bi terzê pêwîst, yanî li gorî halê ku ew têde ye, terbîye dikin. Heke îcab bike, em ji bo wî cezbê, heke îcab bike jî em ji bo wî rêya silûkê tercîh dikin. Em dizanin ku mirovên têne sohbeta me, di dilên hinekan ji wan de tuxmê mehebbetê heye. Di dilê hinekan ji wan de tuxmê mehebbetê nîn e. Yan jî ew ji ber peywendîyên dinyayî û nefsanî rizîye. Ha wezîfeya me, temîzkirina van peywendîyên fanî ye, çandina tuxmê mehebbetê di dil de ye, ewên ku di wan de hatibine çandin jî emê bi heqîqeta zemzemê wan av bidin, emê wan şîn bikin û emê wan bi tava marîfetullahîyê bikin şitleke îxlasê.

Herçî dan hînkirina zikr e, ew wekî dana kevirê haste ji bo destê kesekî ye. Encama di piştî vê de, yanî pêxistina kevirê haste û karê vêxistina çiraya evînê, ji bo mirîdî maye.”

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Çawa nexweşîyên bedenî cuda cuda ne, rêyên dermankirina wan jî ji hev ferqdar û cuda ne, nexweşîyên gîyanî û dilî jî wiha ne. Bi vê nêrînê, dostên Xuda ku xwedî fîraset û besîret in, di terbîya manewî de li gorî rewşa mûxatebên xwe rêyên teşxîs û tedawîyê tercîh dikin. Ew ji bo hinekan her wekî Îbrahîm bin Edhem vê wesîyetê dikin;

«Taca xwe û textê xwe terk bike!» Ew ji bo hinekan jî wekî Fatîh Sultan Mehmed Xan vê îqazê dikin;

«Heke tu dest ji vê erkê berdî û yekî ji te layiqtir jî neyê wê, wê webal di stûyê te de be!» ji bo wan îrşad û teweccuhên xwe di meqamê wan de jî dane dewamkirin.

Ew hinekan ji wan bi avê, hinek ji wan jî bi êgir îmtîhan dikin. Ji lewma çawa ewê ku bi nexweşîyeke bedenî êşdar be ji bo gihiştina wî ya şîfayê zerûrî ye ku ew ji tebîbê xwe re teslîm bibe û receteya ku jê re daye jî tam tetbîq bike, rewş di nexweşîyên dilî de jî aynî wisa ye; heta hê hessastir e jî.. Lewra îhmala di tedawîya bedenê de, zerareke vê dinyayê tenê digihîne wî; lêbelê îhmala di tedawîya dil de jî jîyaneke ebedî li xusranê dixe.

❀

## ÎBRAHÎM BIN EDHEM Û ĞEZAL

Îbrahîm bin Edhem, pêşî ew hukmdarek li Belxê bû, dilê wî bi seltenet û heşmetê ve bû. Arif û sofîyên serdemê car caran îqazên bi îbret didane wî ji bo ew ji van dilpêvemanên xwe xilas bibe û karibe axreta xwe îhya bike. Çawa li gorî rîwayeta meşhûr, wî şevekê ji serbanê seraya xwe hinek gurme-gurmên ecaîb bihîstine, ew ranezabû û bi meraq bang kiribû:

"-Hûn li wir çi dikin?"

Bersiveke ğerîb jê re tê dayîn:

"-Me hêştira xwe winda kiriye, em lê digerin!"

Îbrahîm bin Edhem hêrs bû:

"-Ma însan hîç li serbanî li hêştirê digere?"

Vê carê jî bersiv pirr manedar û îbretdar bûye:

“-Ya Îbrahîm! Tu dizanî ku li serbanî li hêştiran nayê gerîn lê çima tu nahizirî ku di nav vê şetafet û heşmeta dinyayî ya ku tu dijî de jî li seadeta ebedî nayê gerîn?”

Van peyvan li gorî îqazên îbretdarên din, zehf zêde tesîr li Îbrahîm bin Edhem kirin. Lêbelê piştî muddetekî ji ber ku wî ev jî jibîr kirin di halê wî de ti guhertinek nehate dîtin.

Roj wiha derbas bûn û çûn, rojekê Îbrahîm bin Edhem digel heval û hogirên xwe çûne nêçîra ğezalan. Ew demekê ji heval û hogirên xwe cuda bû. Ew pirr bi diqqet li nêçîreke baş digerîya, dengekî ku digot; “şiyar bibe!” hate guhê wî. Wî pirr guhê xwe nedayê, ew nekire tiştek. Heman deng careke din hate tekrar kirin, piştre careke din jî hate dubarekirin.. Piştre wan dengan destpê kir, ji her terefî ve hatin bihîstin. Wan dengan jê re wiha digot:

“-Berî mirin te şiyar bike, tu bi xwe şiyar bibe!”

Îbrahîm bin Edhem hem şaş û metel bû, hem jî wî saw girt. Lêbelê di wê navberê de ğezaleke xweşik derket pêşîya wî. Vêca Îbrahîm bin Edhem kete heyecana nêçîrkirina wê heywana nazdar. Ew dengên pêşî bihîstibûn jibîr kirin, wî tîrek ji rextê xwe deranî û da ber devê kevanê xwe. Wî nîşan girt. Tam wî dikir ku tîrê berde, ğezala nazdar berê çavên xwe xistin nav çavê Îbrahîm bin Edhem û bi zimanî hat, jê re got:

“Ya Îbrahîm! Ma Ellahê Rahman tu aferandî ji bo tu min bikî nêçîr?”

Îbrahîm bin Edhem ji serê xwe heta bi binê lingê xwe lerizî. Çav li wî bûne ewr, wî xwe ji ser hespê xwe avêt erdê û derhal çû sicûdê; tobe kir. Ew li ber Cenabê Heq gerîya û wiha dûa kir:

“Hey Xudayê min!; ê ku lutf û kerema wî bêdawî ye! Tu li halê min jî binêre! Ev çendîn zeman in ku min di nav heşmetê de nefesên emrê xwe bi zayî kirine.. Ey Xudayê min! Bi lutfa xwe dilê min bişo; di dilê min de ji mehebbeta xwe pê ve tiştekî din nehêle!”

Êdî Îbrahîm bin Edhem, çavê xwe ji alemeke cipûcuda re vekiribû, ew di temaşekirina li keş û hewayeke îlahî de noq bûbû. Ha vê temaşeyê, hemû sipehîtîyên dîger ên di wî de bi temamî xîç kiribûn. Bi vî awayî ew cilên seltenetê ku her sibeh bi îhtîmam lixwe dikirin û ew sultanîya Belxê ku singa wî dinepixand, êdî wan di dilê wî de hemû îhtîşam û xemla xwe, welhasil hemû

ehemmîyeta xwe winda kirin û êdî wan destpê kir ew di çavê wî de wek deyn, demî û emanet hatin dîtin..

Îbrahîm bin Edhem di nav vî haletî de çavên wî bi hêstirên tobê şil bûn, dilê wî bi agirê nedamet û poşmanîyê şewitî, ew ber bi çolê ve kete ser rê. Ew zehf zêde birêve çû û li şivanekî rast hat. Ew derhal çû cem şivanî, cilên xwe dane wî û di hember wan de jî rahişte ebayê wî û lixwe kir. Wî di wê demê de di dilê xwe de hest bi rehetîyeke mezin kir. Şivan jî li hemberî vî halê wî şaşomaşo bûbû. Şivan di dilê xwe de digot: "Ku çi be jî padîşahê me aqilê xwe winda kiriye.." Haleveku Îbrahîm bin Edhem aqilê xwe winda nekiribû, bi berevajî vê, esas aqilê wî hatibû serê wî. Ew çûbû nêçîra ğezalan, lêbelê Xudê Teala ew bi ğezalekê şîyar kiribû...

## ÎBRETEK-GIRTINEK JI QISSEYÊ:

Dema tercîhkirina yekî ji dinyayê yan jî axretê bibe mijara axaftinê, ewên ku axretê tercîh dikin wek sultanên ebedîyyetê digihin mûkafatên bêdawî. Lêbelê ewên ku dinyayê tercîh dikin, li vê dinyayê çendan ew di zahirî de sultan bin jî di heqîqetê de li alema ebedî hîç ti tiştek nakeve destê wan û ew di hukmê parsekan de ne. Ha Îbrahîm bin Edhem ev sirr fehm kiribû, dema wî dît ku îslaha wî di destberdana ji hukmdarîyê de ye, wî ev fedakarî û ferağet kiriye û ew bûye sultanek ji sultanên ebedîyyetê. Herçî ew sedem in ku derketine pêşîya wî û ew şîyar kirine, di vê babetê de ew bereketa wan cewherên îxlas û teslîmîyetê ne ku di dilê wî de hebûne. Ya rasttir halê wî yê dilî, wesîleyek bûye, jê re ew sedem dane xuyakirin ku ew bi wan berê xwe bide ser gav avêtina nav keş û hewaya îlahî û gihiştina tecellîyên mezin ên Heq Teala. Wan jê re hêsan kiriye ku ew bi ferağeta mezina wekî destberdana ji sultanîyê, karibe bigihe dereceyên îhsanê. Şair vî halê wî çi xweş xulase dike:

*Dema Heq tecellî bike, her karî hêsan dike;*
*Heq sebebên wê di kêlîkekê de îhsan dike.*

❀

## LEKE-NEANÎNA LI SER RÊYA HEQ

Ev rê, yanî rêya tesewwufê, ufûqeke wisan pirr rohnî ye pirr rohnî ye, ew nûra Heq tecellî dike ku bi ti awayî lekekekê qebûl nake. Ewên ku karibin

cewher û gîyanê vê rê bibînin, di wê de hîç rewşeke ji dînê mûbîn re dijber nabînin.

Di heleqeya manewî ya Hezretê Şahê Neqşîbend de ewam-xewas ji her sinif û çînîyên mirovan şagirt û talebeyên bêjimar ên wî hebûn. Giregirên alimên Buxara'yê yên her wekî Husameddîn Hace Yûsuf jî ji bo pişkdarbûna di dîwanên sohbeta wî de can diavêtin. Lêbelê hinek ji aliman, ev yek di navbera xwe de ji bo gotegotê bi wesîle kiribûn û destpê kiribûn di navbera xwe de di bara Behauddîn Neqşîbend -quddîse sirruh- de gotinên bêesas dikirin. Paşê rojekê ev dijber, bi Hezretê Neqşîbendî re di dîwanekê de hatin cem hev û tenkîd û rexneyên xwe jê re anîne zimên. Behauddîn -quddîse sirruh- ji wan re got:

"-Werin, em rêya xwe ji we re vebêjin; heke babeteke ji Qur'an û sunnetê re dijber hebe, bibêjin em jê vegerin!.."

Wan aliman li vegotinên Hezretê Pîr guhdarî kirin û bi hûrî û kûrî ev rêya mezina tesewwufê mûtalaa kirin, ew ji nêzîk ve ji van heqîqetên ulwî re bûne şahid û têde tiştek nedîtin ku lê îtîraz bikin. Vêca bi kemala edebê jê re gotin:

"-Ez benî, rêya we sîrata mûsteqîm bûye; me ti îtîrzek lê nîn e!.."

## ÎBRETEK:

Ji vê bûyerê hate fehmkirin; Qur'an destûra ehlê Xuda ye, sunnet rêbaza wan e, şerîata Xuda terîqeta wan e. Ha rêya durusta tesewwufê ev e; ew di peyrewbûna Qur'an û sunnetê de titîzîyeke mezin şanî didin û di nav riqqeteke qelbî de dibin. Şahê Neqşîbend îşaret didane salikên xwe ku ew jî li ser vê mînwalê hereket bikin. Wî di îlmên zahirî de bi aliman re pevçûn nedixwest, bi berevajî vê, wî ji wan re digot; kerem bikin, werin, "heke babeteke ji Qur'an û sunnetê re dijber hebe, bibêjin, em jê vegerin" ew ehemmîyeta îstîqametê di vê rêya tesewwufê de îfade dike. Ji lewma tişta ji bo salikên vê rê jî pêwîst, ew heman hessasîyetê şanî bidin û ti lekeyek neanîna ser vê rêya pîr û pak e.. Lêbelê li vir ji aliman meqsûd, alimên salih in, heke na, ne «alimên bisû'û» in ku fesadî gihaye qelbê wan û îlmên wan. Ew bi berevajî rêya Heq hereket dikin, îxlas û teqwayê hîç dijmêrin, fezîletên dostên Xuda înkar dikin û bi îfadeya Qur'anî, ew ğafil in ku li hemberî malekî hindik ê dinyayî ayetên Xuda difiroşin..

## KERAMET

Rojekê mirîdên wî ji Hezretê Şahê Neqşîbend keramet xwestibûn. Wî ji wan re gotibû:

"-Kerametên me eşkere ne. Ha ji we re kerametek, de binêrin; li ser milên me digel ku ev qeder guneh û webal hene jî dîsa em dişên li ser pêyan rawestin û em dikarin li sererdê birêve herin. Ma kerameteke ji vê kerametê mezintir çêdibe?.."

Piştre wî bibîranî ku di tesewwufê de babeta giring îstîqamet e, ne keramet e. Wî bi berdewamî wiha got:

"-Heke kesek here nav bexçeyekî û li wir bibihîze ku wa ye, her yek ji pelên daran jê re dibêje; «ya welîyê Xuda ji te re merheba!» divê dîsa ew bi zahirê xwe û batinê xwe ji vî dengî re îltîfat neke! Bi berevajî vê, divê ew di evdînîya xwe de ğeyret û ezma xwe hê zêdetir bike."

Vêca hinek mirîdên wî jê re gotin:

"-Ez benî, çi qeder hûn serê binixumînin jî dîsa dem bi dem keramet ji we xuya dibin!.."

Wî abîdeyê nefsbiçûkî û tewazûyê ji wan re got:

"-Ew kerametên ku we mûşahede kirine, kerametên mirîdên min in."

Lewra ew di nav mehfîyeteke (xwe veşartineke) wisan de bû ku dema ew li jîyanê bû, mirîdê wî Husameddîn Hace Yûsuf jê xwestibû ew peyv û kerametên wî binivîse. Lêbelê wî destûr nedabû wî mirîdê xwe ku ew bi nivîsandina peyvên wî û kerametên wî rabe.

## DESTÛR:

Mezinên Îslamê, di rêya Heq de tim û daîm ji bo xwe ne keramet, lêbelê îstîqamet bi destûr kirine û wisan karîne bi meqamên mezin û bilind bigihin. Wan anîne zimên ku di saya kerametên xwe de wan qîmeteke ji qîmetê çûkekî ku di hewayê de difire û masîyekî ku di avê de avjenîyê dike bêhtir qezenc nekirine. Dîsa wan bi her wesîle û navgînê îfade kirine, vegotine; tekane marîfet, ne berê xwe dana wê teqlîda ku çûk û masî dikine, lêbelê marîfeta tekane ev e; mirov di nav hest û pêhisa evdînîyê de ji rizaya Heq re wek ram karibe li ser îstîqametê bijî û wan ev bi her halê xwe jî şanî dane..

## TESÎRA QELBÊN ĞAFIL

Di sala 1340 hicrî de di rojeke mûbarek de li Îstanbûlê li Mizgefta Ayasofyayê zîyafeta Qur'ana Pîroz û Mewlûda Şerîf hebû. Mizgeft heta bi mahfîlên xwe jî têr tije bûbû. Alim û talebe li mizgeftê hazir bûne. Hafizên gûzîde yên zemanê xwe dest bi xwendina Qur'ana Pîroz û Mewlûda Şerîf kiribûn.

Bi navê Adil Beg ê Beylerbeyî zatekî xwedî halê manewî û keşfa wî eşkere li cihekî ji kursî nêzîk rûniştibû û li xwendinê guhdarî dikir..

Piştî bîstikekê tengavbûneke halê manewî li Adil Beg peyda bû. Bêhna wî teng bû, nexweşhal bû. Haleveku di atmosfereke ku têde Qur'an û Mewlûd dihatin xwendin de diviyabû diltengbûneke wiha li wî peyda nebûne. Adil Beg bi meraq li hawîrdoran meyzand. Wî dît ku tam li pêşberî wî ğafilekî bi qesweta qelbê xwe mûbtela heye; wî ferq nexistibûyê û ew herdu sing bi sing li hevber rûniştibûne. Bi vî awayî Adil Beg fehm kir ku diltengî ji wî ğafilê qelb bi qesawet xwe di wî de dide xuyakirin. Wî derhal cihê xwe guherand, bi vî awayî çendan biçekî dilşad bû jî lêbelê heta mûddetekî tesîra wî ji ser wî neçû.[719]

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GİRTİNEK

Çawa ji kesên salih hizûr û ferahî xwe di dilan de dide xuyakirin, ji kesên ğafil jî bêhizûrî û qesawet xwe di dilan de dide xuyakirin. Lewra qelbên ku di bexçê gulan de digerin, bi hezar û yek rayîha û bêhnan mest dibin, ew rûh û gîyanên ku li dorhêla teressubatan (pîsîtîyan) dikevin jî bi bêhnên xirab ên ku teaffun (bêhn didin) dikin jî bêzar û nexweşhal dibin. Ji lewma Cenabê Heq, di babeta wan înkarçîyên ku dilên wan rizîyane û ew tim û daîm tesîra xirab li ser hawîrdorên xwe dihêlin de jî dibêje:

**"Dema tu wan kesan bibînî ku di bara ayetên me de xwe di axaftinên neçê de noq dikin, xwe ji wan dûr bike heta ew bikevin axaftineke din.**

719. Tesîra nimêja ku tê kirin li gorî rewşa qelban e. Cenabê Heq di sûretê Maûn de dibêje: "**Xwelî li wan nimêjkeran be ku ew di nimêjên xwe de ğafil in. Ew di kirinên xwe de rîyakar in**." (Sûretê Maûn, 107/5-6) Bi vê nêrînê, ğayet tebîî ye ku mirovên ğafil, yanî kesên bi qelbê xwe nexweş, heta mûnafiq jî li mizgeftan hebin.

**Heke şeytan bi te bide jibîrkirin, piştî hate bîra te êdî tu bi vê civaka zaliman re nerûne.**”[720]

Bendeyên xas ên xwedî hessasîyeta qelbî, nezaket û ziravîya di vê fermana îlahî de hê baştir fehm dikin. Lewra hessasîyeta di qelb de çi qeder zêde bibe, endaz hê kûrtir dibin, awir destpê dikin heqîqetên di pişt perdê de jî dibînin, hest, bûnên ku herkes ferqê naxe wan jî hiss dikin. Ji vê re wek mîsal, ev halê Seyfî Beba pirr îbretdar e:

Yek ji dostên Heq Seyfî Baba zatekî keşfa wî vekirî û xwedî hal bû, wî pirr ji Hezretê Samî Efendî hez dikir. Ew li Topkapîyê rûdinişt, îqamet dikir. Rojekê ew hatibû serdana Samî Efendî -quddîse sirruh-. Lêbelê dema wî lingê xwe avête dewletxaneyê ji xwe çû. Ew kesê ku çûbû pêşwazîya wî ji bo jê re bibêje, kerem bike, were jorê û wî bibe hizûra seyda bi telaş av bi ser wî de rijandibû û piştî kiribû ku ew bi xwe were û got:

“Derhal em doktorekî bang bikin!” Seyfî Baba di wezîyeteke westîyayî de desttêwerdan kir û got:

“-Na kurê min! Doktor moktor bang nekin; ti peywendîya halê min bi nexweşîyeke maddî re nîn e! Ez heta ji Topkapîyê hatim Erenkoyê, ji ber ku ez di rê de li ehlê îsyanê rast hatim, qesaweta li cihên îsyanê tesîr li min kir û dema ez di vî derîyê tertemîz de hatim hundur û ez gihame rûhanîyetê, dilê min nekarî xwe li ber wê tesîrê bigre.. Bi bereketa keş û hewaya manewî ya li vir û bi himmeta sultanê arifan Samî Efendî piştî bîstikekê hîç tiştekî min namîne.”

Welhasil çawa ji ğafilan tesîrên menfî xuya dibin û qelb teng dikin, aynî wisan ji salihan jî tesîrên musbet û feyzdar hasil dibin û dilan fereh û şadman dikin. Ji lewma erbabê dil, ji bo mûhafezakirina halên xwe heta mûmkin bibe bila xwe ji ğafilan dûr bikin û xwe ji salihan nêzîk bikin. Di vê meyanê de Hezretê Dawud -eleyhisselam- car caran penaha xwe dibir ber Cenabê Heq û wiha digot:

“Xudayê min! Heke tu min bibînî ku wa ye min berê xwe daye dîwana ğafilan, hê ez negihatim wir, lingên min bişikîne da ku ez neçim cem wan. Heke tu wiha bikî, ew ji bo min dibe lutfeke mezin.”

❀

720. En‘am, 6/68.

## DERÎYÊ DOSTÊ TE

Rojekê Hezretê Ebû Seîd Nîşabûrî ji talebeyên xwe re got:

“-Merkeban hazir bikin, em diçin bajarokî.”

Wan jî hazirî kir û Hezretê Pîr, cemaetek ji talebeyên xwe jî bi xwe re bir û ketin ser rê. Dema ew li Nîşabûrê gihane gundekî, wî ji wan pirs kir:

“-Navê vî gundî çi ye?” Wan di bersiva wî de gotin:

“-Derîyê dost, yanî derîyê dostê te ye.”

Vêca Ebû Seîd -quddîse sirruh- qerar da ku ew li wir peya bibin û ew koça xwe li wir deynin. Ew rojekê li wir bûne mêhvan, piştre hinek talebeyên wî jê re gotin:

“-Ez benî, ji xwe ve em diçûne bajarokî; ma emê li ser rêya xwe dewam nekin?”

Hezretê Ebû Seîd dilê wî ji sirrên manewî tije bû, ji wan re wiha got:

“Evîndarê te ji bo bigihe derîyê dost divê gellek rêyan qut bike. Madem em hatine vir, yanî em gihane “derîyê dost”, êdî emê herin kuderê?”

Ew tam çil rojan li wir man. Gellek halên manewî hatine jîyînê û gellek kes ji xelkê gund bi sohbetên mûbarek û feyzdarên Ebû Seîd -quddîse sirruh-, tobe kirin û ew bûne ji talebeyên durust ên wî. Ha esil maneya ku Hezretê Pîr wek “derîyê dost” qesd kiribû jî ev bûye, yanî fetihkirina dilan bûye… Lewra vebûna derîyê seraya rizaya dostê te, bes bi birina wir ya dilekî hatî qezenckirî mûmkin bû.

## ÎBRET-GIRTINEK

Bi qezenckirina dilekî gerîna li derîyê dost, ji bo hemû dostên Heq ên kezeb helîyayî û evîndar, mezintirîn nîşana cudakera wan bûye û ew di zincîra amelên salih ên ku wan ji bo gihiştina wusleta mezin hazir bike de bûye destûreke mehebbetê. Di vê rê de Hezretê Şahê Neqşîbend jî wezîfeya xwe ya îrşadê ku ew jê berpirs bûye, di nav hewldan û ğeyreteke wisan mûstesna de dikir ku ew bi her halê talebeyên xwe re têkildar dibû. Dema Hezretê Pîr diçû serdana kesekî, piştî hal û xatirê wî dipirsîn, piştre pirsa ferdên malbata wî dikir, pirsa lêzimên wî dikir, pirsa heywanên wî yên merkeb dikir, heta pirsa mirîşkên wî jî dikir. Bi vî awayî wî hewl dida dilê wî kesî qezenc bike. Dema

li dîwanekî xwarinek dihate hazirkirin, wî bi xwe hinek ji wê xwarinê ji bo kesên ku ew hazir kiribûn, îkram dikir...

❀

## ÎTAET, XIZMET, NESÎHET

Zatekî salihê ku li ser çûna sohbeta Dawudê Taî dewam dikir, ji Marûfê Kerxî re got:

“-Zinhar kirina amelî terk neke! Lewra amel, wê te ji rizaya Cenabê Heq nêzîk bike.”

Marûf jê pirs kir:

“-Tu bi amelî çi qesd dikî?”

Wî zatî jê re got:

“-Di her hal û karî de îtaet-kirina ji Rebbê xwe re; xizmet-kirina ji mislimanan re û nesîhet-kirina li wan..”

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Îbadetekî hindik ê ku bi **îtaet** û teslîmîyetê were kirin, li cem Heq Teala ji îbadetekî bi qeder çîya yê ku bê îtaet û bê teslîmîyet tê kirin, bi xêrtir e. Lewra evdînî, bi îtaet û teslîmîyetê destpê dike. Çawa şeytan ne bi sedem kêmbûnîya îbadetê xwe ji dergehê mezin hate qewirandin; lêbelê ew bi sedem kêmbûnîya îtaet û teslîmîyeta xwe hate qewitandin.”

**Xizmet** jî fezîleteke wisa ye ku hemû pêğemberan û ewlîyaullah xwe pê ve girtine, wan şexsîyetên mezin, di halên nexweşîya xwe de heta li ser doşekên mirina xwe jî xizmet ji dest xwe neberdane. Ev rewş di babeta gelo divê mirov çawa xwe bi xizmetê ve bigre de ji bo ehlê îrfanê mîsaleke kafî û bes e. Bi kurtî xizmet, şîara dilên bimerhemet û comerd e.

Mûmînê kamil, ehlê xizmetê ye û wî xwe di halekî ji hebûna fanîya xwe jî selixandî de neferekî dil e ku ew di karwanê xizmetê de li paş herkesî ye. Ew, li cem derdmend û nexweşan e, li tenişta matemdar û ğemgînan e, li ber serê hêvî-nemayan e, dostê êşdar û bêkesan e.

Herçî kirina **nesîhet**a ye, ev çawanî û keyfîyeteke aîdê ehlê xwe ye. Lewra ew tewsîya ku tê kirin, bi qeder ku tê jîyînê tesîrê dike. (Yanî nesîheta ku li yekî tê kirin bi qeder ku nesîhetkar wê di heyata xwe de dijî, ew tesîrê li ser nesîhetlêkirî dike). Bi vê sedemê, ne rast e ku herkes nesîhetê bike. Ewên ku ji bo vê layiq bin, yanî selahîyeta wan kesan ji bo nesîhetkirinê heye ku wan bi xwe kirasê uslûba nebewî û exlaqê wî li xwe kiribin. Digel vê jî ewê ku gihabin vê selahîyetê û dîsa xwe ji kirina nesîhetê didin paş û jê direvin dê berpirsî û hesabê wan mezin bibe. Lewra di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Dîn nesîhet e*."[721]

Ji bo vê terk-kirina nesîhetê, di Sûretê Esrê de wek sebebeke xusranê tê eşkerekirin. Tabîî guhdarî nekirina li nesîhetê jî di nava vê maneyê de ye. Yanî ew jî sedemeke xusranê ye.

Welhasil divê salikên rêya Heq **îtaet**, **xizmet** û **nesîhet**ê ji bo xwe bikin destûreke jêneger û divê ew ğeyretê şanî bidin ku bi wasîteya vê seadeta ebedî, rizaya Heq tehsîl û qezenc bikin.

❁

## XIZMETA JI MEXLÛQATAN RE

Pertewnîyal Walîde Sultan li Aqsaraya Îstanbûlê Mizgefta Walîde daye çêkirin, dema wê wefat kir, kesekî salih ew di xewna xwe de di meqamekî sipehî de dît û jê pirs kir:

"-Ma ji ber ku te mizgeft daye çêkirin Xuda ev meqamê bilind daye te?"

Pertewnîyal Walîde Sultanê jê re got:

"-Na."

Ew zatê salih şaş û metel ma û jê pirs kir, jê re got:

"-Naxwe tu bi kîjan amelê xwe gihayî vê mertebê?"

Walîde Sultanê ev bersiva îbretdar dayê:

"-Hewayeke pirr bi baran bû. Em diçûne serdana Mizgefta Sultan Eyyûbî. Li ser kenarê tibarê (kaldirimê) av kom bûbû, min di navê de çêlîkeke

721. Buxarî, Îman, 42.

lawaza kitikê dît. Min faytona/textê rewanê xwe da rawestandin; min ji xweha li kêleka xwe re got:

«-Here vê kitikê bîne; heke na, rebenê wê bixeniqe!..»

Xwehê jî got:[722]

«-Eman Sultana min! Wê cilên te jî û cilên min jî bilewitin.» û nexwest here wê bîne.

Min jî ji bo wê neşikînim ez bi xwe ji eraba xwe peya bûm, ez çûme nav herîyê û min ew çêlîka kitikê xilas kir. Ew kitik dilerizî. Dilê min pê şewitî, min ew da ber hemêza xwe û min ew baş germ kir. Hê demeke dirêj bi ser de neçûyî wê can da û mir.

Elah Teala ev meqamê mezin, ji bo wê xizmeta ji vê kitikê re û ji bo wê merhemetê ji min re îhsan kiriye."

### JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN

Rêya derketinê ji bo asîmanê wê kemalê ku rûhê însanî bigihîyê, di pêpelingên merhemet û xizmetê re derbas dibe. Ji lewma divê her misliman xizmet û merhemetê ji bo xwe bi tebîatê esilîyê xwe bîne û wan ji bo xwe bike wesfê fariq û cudaker.

❀

## NEZAKET DI DOSTÊN HEQ DE

Mûsa Efendî -quddîse sirruh- vedibêje:

"Demsaleke hecê bûye. Seydayê Mûhterem Hezretê Samî Efendî û zarokên wî li Mekkeha Mûkerrem ji Mescida Beytullah'ê nêzîk li semta Cîyadê li mala Ebdûsselam Efendî yê Tirkistanî bûne. Odeya Hezretê Efendî li hemberî kolanê bû, em heval û yawerên wî jî ber bi hundur ve bûne.

Di wextekî nîvro de wî şeref da hate ber derîyê odeya ku em lê bûne û ji me re got:

722. Jinên zencî yên Sûdanî li cem Walîde Sultanan kar dikirin. Di Serayê de ji van re "**bacî=xweh**" dihate gotin. Ji ber ku Sûdanî temîz, binamûs û biîffet bûn Osmanîyan bi taybetî ew di Serayên xwe de wek xizmetkar îstixdam dikirin.

«-Li derve yek heye ez dibê hema îhtiyaca wî bi xwarinê heye!»

Min derhal xwarinên ku bidine feqîrî hazir kirin û dema ez derketim ber derî jî min ti kes nedît. Ez li hêvîya wî nesekinîm û min texmîn kir ku ew çûye. Vêca ez bi şûn de vegerîyam. Heşt, yan jî deh deqîqe derbas bûbûn ku dîsa Hezretê Efendî li ber derî hate dîtin, got:

«-Ew hewcedar dubare hat; li hundur dinêre!»

Min dubare rahişt xwarinê û dema ez derketim ber derî, heywanî zimanê xwe deranîbû li hundur dimeyzand, yanî min segê birçî dît. Min derhal xwarin li berê vala kir. Ew pirr zêde birçî bûbû, wî xwarin hemû xwar."

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN

Ha nezaket, tewazû û nefsbiçûkîtîya mezinan wiha dibe. Hezretê Samî Efendî, bi cinsê wî seg bang nekiriye, lê tabîra «kes» bikaranîye. Heta wî bi pirranî ji bo heywanan jî di şûna "mexlûq/aferînde" de tabîra "evdê Xuda" bikardianî.

Lewra sipehîtîya exlaqî ya ku ji bo xatirê Aferînerî ji aferîndeyên wî re tê şanîdan, di heqîqetê de sipehîtîya qelbê selîm e ku ew ji qelbekî ji dil û can bi Wî ve bend ji Aferînerî re tê erzkirin.

Ew kesê ku gihabe qelbê selîm jî gihaye serkehnîya xilasneber û neçikaha'ya dostanîyê. Êdî ew di halê lezzeteke îlahî de ye. Lewra qelbên selîm, ew mekan in ku Heq di wan de tecellî dike. Qelbên wisan jî, şaheserên comerdî û merhemetê ne.

❁

## ÎRADE DI HIZÛRÊ DE

Gotegotek belav dibe ku ji mûtesewwifên serdema dawîn Şêx Mûhemmed Nûru'l-Erebî "**îradeya beşerî**" yanî îradeya cuz'î înkar dike. Sultan Ebdûlhemîd Xan jî vê gotegotê dibihîze, dixwaze Hezretê Pîr ji bo dersên hizûra wî were bangkirin û li wir ev mesele ji wî were pirsîn. Ferman tê bicihanîn, Şêx Mûhemmed Nûru'l-Erebî ji bo dersên hizûra wî tê bengkirin. Dema li wir keyfîyet û çawanîya meselê jê tê pirsîn, Hezret wiha bersiv dide, dibêje:

“Di bendeyî de helbet îradeyeke cuz’î heye. Ha serkehnîya berpirsîyê jî ev e. Lêbelê ne di herkesî de û ne li her deverê ye. Mesela ez helbet xwedîyê îradeyeke cuz’î me. Lêbelê ez bi fermana padîşahî hatim. Ji vir rabûn û çûn jî ne di dest min de ye. Ji me re tê gotin: «Were» em tên, ji me re tê gotin; «here» em diçin. Naxwe li vir îradeya min -di babetekê de- di hukmê nînê de ye. Bi heman awayî ji ber ku ez li hizûra padîşahî me jî hereketên ku ez karibim bikim jî sînordar in. Hinek kes jî aynî wekî ku di vê meseleyê de wisa ye, bi awayekî berdewam di nav îdraka bûna di hizûra Rebbê xwe de dijîn. Digel ku Ellah li her cihî hazir û nazir e jî lêbelê dîsa gellek kes xwe sade di nimêjê de di hizûra îlahî de qebûl dikin. Lêbelê ew kesên ku gihane mertebeyeke bilinda manewî herdemê di îdraka bûna di hizûra îlahî de dijîn. Vêca hûn teqdîr bikin; “gelo di kesên wiha de îradeya cuz’î tê jimartin yan jî nayê jimartin?” Ji ber ku ev bersiv li xweşîya padîşahî çûbû, wî îhsan û îkram li Şêx Mûhemmed Nûru’l-Erebî kiribûn.

## KURTÎYA PEYVÊ:

Bende, xwedîyê îradeyekê ye. Ev îrade yan jî qudret, ji terefê Cenabê Heq ve ji wî re hatiye bexşkirin. Ellah Teala digel ku îradeya wî di her bûnê de heye jî lêbelê rizaya wî sade ji bo karên xêrê tenê heye. Emanca xwaceyekî jî mûcehhezbûna talebeyê wî bi malûmatan e û ji sinif û polê derbasbûna wî ye. Vêca heke talebe kar neke, tiştek nîn e ku xwaceyê wî jê re bike. Dîsa peywira doktorekî jî bi şîfayê gihandina nexweşê xwe ye. Vêca heke nexweş wê receteya ku jê re hatibe dayîn tetbîq neke, êdî ji wê netîce û ekama xiraba ku ew bigihîyê sade nexweş berpirs e. Ti kes nikare sûc bixe stûyê doktorî.

Li alîyê din jî teslîmkirina îradeyê ji bo wî zatê ku mirov li hizûra wî be, dibe wesîle ji bo hatin îhsankirina hê zêdetir ji wî tiştê ku ew hatiye bi teslîmkirin. Yanî bendeyek, heke di nav pîvanên îxlasê de nêrîna xwe ji nezara bêdawîya Cenabê Heq re, destên xwe ji destê qudretê yê bêdawî yê Wî re, zimanê xwe ji sifetê kelamî yê Wî yê bêdawî re, guhên xwe ji bihîstina namutenahîya Wî re teslîm bike, wê nêrîn, bihîstin û îdraka wî cipûcuda bibin.. Yanî ewê ji tiştên ku dane hîç mehrûm û bêpar nebe. Bi berevajî vê, her tiştê ku wî teslîm kiriye, ewê di nav bêdawîyê de bi çendîn nesîbên ebedî wergerin. Ji lewma Cenabê Heq di bara bendeyên salih ên xwe de ku karîne daîmî di nav îdraka bûna di hizûra îlahî de ji wê îradeya mezina wî re teslîm bibin di hedîsa qudsî de bi mecazî wiha dibêje:

*"Ez ji bo wan dibim ew çavê ku ew pê dibîne, ew guhê ku ew pê dibihîze û ew destê ku ew pê digre."*[723]

## EDEB

Dawudê Taî wiha vedibêje:

"Ez bîst salan bi Hezretê Ebû Henîfe re bûm. Min di nav ev qeder zeman de diqqet kir û min ew hîç nedît ku dema ew bi tenê be, yan jî dema hinek pê re hebin ew serqot rûniştibe, yan jî wî bi meqsûda îstîrahetê lingên xwe dirêj kiribin. Min jê re got:

«- Çi mehzûra wê heye ku dema tu bi tenê bî tu lingên xwe dirêj bikî?»

Wî ji min re got:

«-Li hemberî Cenabê Heq biedeb bûn hê çêtir e.»

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Ewên ku li cem sultanekî bin, yan jî li cem kesekî meqam mezin bin, wekî ku li derve hereket dikin nikarin wisan li hizûra sultanî û li hizûra mirovê meqam gewre jî hereket bikin. Lê ew ğeyret dikin bizavên ji cih û meqamê ku lê bin re guncaw, raxin ber çavan. Yanî bûna di hizûra yekî de, lazim dike mirov kirasê edebeke mûnasiba ji wî re lixwe bike. Ehlûllah jî ji ber ku di her an û gavê de di nav îdraka bûna di hizûra Xuda de dijîn, bi ti awayan edebê terk nakin. Ji ber vê jî ev halê edebê li ser hemû jîyana wan şamil tê. Lewra ew, ew dilên arif in ku di her dem û her mekanî de xwe bêperde li hizûra Yarê mezin dibînin û bêdelîl vê hiss dikin. Yanî ew ji bo sirra:

وَهُوَ مَعَكُمْ أَيْنَ مَا كُنْتُمْ.

"**Hûn li kuderê dibin bibin her Ew** (Xuda) **bi we re ye.**"[724] wek çavnas û aşna, her an û gava xwe bi hesta pevrebûna bi Xuda re dijîn.

Em dixwazin bibêjin; hinek mirov hene, sade di nimêjên xwe de xwe di hizûra Xuda de hiss dikin. Ev hisskirin, hema nebe nebe jî wan di nimêjê de

723. Buxarî, Rîqaq, 38.
724. Hedîd, 57/4.

ji bo li ber çavan girtina erkanê nimêjê diajoyê ser edebê. Ehlûllah jî ji ber ku her an û gavê di nav vê hest û hizrê de ne, hal û edebên wan ên li derveya nimêjê jî aynî wekî yên di nimêjê de ne. Çawa di bara pesndana mirovên wiha de Cenabê Heq dibêje:

الَّذِينَ هُمْ عَلَى صَلاتِهِمْ دَائِمُونَ.

“**Ew** (nimêjker) **kes in ku li ser kirina nimêjên xwe berdewam in**.”[725] Yanî li kêleka îhmal nekirina nimêjên xwe, li ser kirina nimêjên xwe her berdewam dibin. Cenabê Heq di bara wan de gotiye; ew daîm di halê nava nimêjê de dibin. Ev jî li kêleka îhmal nekirina nimêjê, mûhefezakirina halê nimêjê di derveya nimêjê de jî îfade dike.

❁

## EDEB DI XIZMETÊ DE

Ebdûllah Rûgandî dibêje:

“Zinhar xizmeteke ku ji bo te tê pêşkêşkirin, biçûk nebîne! Lewra xizmet her xizmet e, û xizmeteke ku ji te re ne giring dixuyê jî dibe ku ew -bi sedemên curecur- li cem Xuda pirr giring be. Lewra ji me re ne dîyar e, mechûl e, em nizanin ka rizaya Xuda di kîjan xizmetê de ye! Ji lewma heta bi gihiştina mirada Wî, yanî heta bi gihiştina rizaya Xuda li ser kirina her xizmetê dewam bike. Li vir nîmet û mezherîyetên ku tu gihayî wan jî sade bila şukir û xizmeta te zêdetir bikin.”

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Ya giring ne kirina her xizmetê ye, di heman demê de ya giring mirov karibe wê xizmetê bi îxlas û bi awayekî sipehî bicih bîne, pêşkêş bike. Ji lewma ewên ku talibên xizmetê bin jî divê meqsûda wan sade ne xizmet-kirin tenê be; lêbelê divê wan bizavan bikin ku wan bigihîne rizaya Xuda. Heke na, sade kirina wan xizmetên ku mirovî bixe çavê wî kesê xwedî meqam û mewqîî û menfîatê ji mirovî re temîn bike û pişta xwe dana çendîn xizmetên din ên ku li derveya wan dimînin jî îflaseke ebedîyyetê ye. Ew kesên ku wiha

725. Mearic, 70/23.

bin, bi zahirê xwe dikevine çavên hinekan, lêbelê nezara rahmê ya Cenabê Heq ji ser wan radibe û di wan de ğezeba îlahî tecellî dike. Lewra babeta di xizmetê de giring, li vê alemê ne bidestxistina encamên ku di nezara fanîyan de çavan kwîr dikin. Lêbelê ya giring mirov karibe wan amel û xizmetan li holê deyne ku di alema axretê de mirovî bike sultanê manewîyatê.

Li ser vî esasî salik, divê her cure xizmetê ji bo xwe bi ğenîmet zanibe. Dibe ku di nav xizmeteke ku herkes wê biçûk dibîne de ecr û mûkafatên îlahî yên ew qeder mezin veşartî bin ku erd û asîman nikaribin wan bixe nav xwe. Lewra Cenabê Heq, çendîn deryayên ku em dixwazin, carina di nav îmtîhana îxlas û semîmîyetê de di nav dilopê de veşartî dinêre ka dilan berê xwe daye çi.

❁

## HER EDEB

Îbn-î Eta -quddîse sirruh- wiha dibêje:

“Ewên ku di vê rêya manewî de bipêşkevin, sirf bi îbadetên ferz ên wekî nimêj û rojîyê negihane vê mezinahîyê. Bi berevajî vê, bi îlawe li ser îfakirina van bi awayekî tam û bêqusûr, ew bi amel û bizavên fezîletdar bilind bûne. Çawa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- gotiye:

«*Roja qiyametê ji navbera we yê ku zehf ji min nêzîk be, wê ew kes be ku wek xuy û exlaqê xwe sipehîtir e.*» [726]

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Şair çi xweş dibêje:

*Edeb tacek bûye ji nûra Xuda,*
*Lixwe bike wê tacê, emîn bibe ji her belayê*

Şairekî din jî wiha dibêje:

*Ez di navbera ehlê zimanan de gerîyam û min kir taleb*
*Her huner meqbûl bûye, her edeb, her edeb*

726. Tirmizî, Birr, 71.

Ewên ku bi durustî qehremanên edeb û exlaq in, pêğember û welî ne. Her wiha ewên ku zanîbin van zatan taqîb bikin jî ji bo bûna xwedî ji vî exlaqê mezin re îradê şanî didin. Esasê exlaqî, ji kemala dînê pê ve ne tiştekî din in. Exlaq, xilasbûna ji wesfên heywanî ye û mûzeyyenbûna bi mezîyetên însanî ye. Di rastîyê de misliman bûn jî ji exlaqê îslamê re bi sahib-bûn e. Dan guhastina sipehîtîyên ulwî di hal û bizavan de ye.

Welhasil dema mirov bi nezara aqil û xizmetê binêre, dê were dîtin ku di Qur'ana Pîroz de babeta mezintirîn û hîmdara ku cih digre, edeb û exlaq e. Di Qur'anê de heta qisseyên tarîxî jî bi meqsûd dan hînkirina exlaqî, yanî bi mebesta dan hînkirina mûkemmelîyeta bizavan hatine zikrkirin.

**Hezretê Mewlana** dibêje:

"*Qelbê min ji aqilê min pirs kir, jê re got: «-Îman çi ye?» Aqilê min jî serê xwe tewand, devê xwe bire ber guhê qelbê min û bi pistepist jê re got: «-Îman ji edebê îbaret e.»*"

"*Ji lewma kesên bêedeb, ne xirabîyê li xwe tenê dikin. Belkû ew ji ber bêedebîya xwe bûne her wekî ku agir berdabin dinyayê tevî.*"

❁

## EXLAQ Û XIZMETA DOSTEKÎ HEQ

Hezretê Ahmed er-Rîfaî kî didît silav her lê dikir. Dema wî dibihîst ku li gundekî, yan jî li bajarokekî mirovekî nexweş heye, ew di firsenda pêşî de diçû serdana wî. Ew di esnaya rêwîtîyekê de li hinek nebînan rast tê, bi destên wan digre û wan heta bi cihên ku herinê, dibe. Dema ew li yextiyarekî rast dihat, radihişt barê di dest wî de, arîkarîya wî dikir û ji dostên li hawîrdorên xwe re jî bi vê hedîsa şerîfa Mezinê me pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- nesîhet dikir, digot:

"*Kî, ji bo yextiyarekî hurmet û arîkarîyê bike, Xudê Teala jî ji wî re kesekî îhsan dike ku di yextiyartîya wî de hurmet û xizmetê jê re bike.*"[727]

Carekê ew çûbû gerekê ji bo derveya bajêr, di vegera xwe de ew diçe nav daristanê, êzingan dibirre, wan li ser merkeba xwe bar dike û wan tîne bajêr; ev êzing li ser jinebî, bêçare, feqîr û hewcedaran belav dikirin.

727. Tirmizî, Birr, 75.

Ew dibezî, diçû xizmeta dîn û şehtan, cilên wan temîz dikirin, bi wan re rûdinişt, bi wan re sohbet dikir, xwarina wan bi destê xwe ji wan re dibir û ew bi wan dida xwarin. Piştre wî ji wan dixwest ku ewê jê re dûa bikin. Wî ji mirîdên xwe re jî wiha digot:

"-Serdana bêçareyên wiha ne mûsteheb e, wacib e!.."

Rojekê dema zarok ji xwe re dileyistin ew di ber wan re derbas bûbû. Zarokek ji heybeta manewî ya Hezretê Ahmed er-Rîfaî tirsîyabû û ji berê bazdabû. Hezretê Pîr, derhal li dûv wî bazda û di nav şefqet û mehebbeteke mezin de ew bang kirin, dilên wan ji xwe re fetih kirin û uzrê xwe ji wan xwest, ji wan re wiha got:

"-Zarokên min! Hûn dibînin ku ez jî evdekî bêçare me! Heke min hûn xistibin endîşeyan, heqê xwe li min helal bikin!"

## WELHASIL:

Rêya marîfetullah ku têde rizaya Heq û wusleta wî tê qezenckirin, dişibihe rûpeleke sip-sipî. Ew qeder ew sip-sipî ye ku hemû nivîsên li wir têne nivîsîn jî sipsipî ne, û sade Heq Teala wan dixwîne. Ji lewma ehlûllah, di dirêjîya temamê temenê xwe de ji bo lekeyeke reş nepale li ser wê rûpelê kefteleftê dikin, ew xwe ji êşandina mîroyekê jî ew qeder didin paş û ji bo gihiştina rizaya îlahî jî exlaq û xizmetên xwe tim û daîm di halekî tertemîz de li Heq Teala erz dikin.. Lewra Cenabê Heq dibêje:

إِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ التَّوَّابِينَ وَيُحِبُّ الْمُتَطَهِّرِينَ.

"**Bêşiwar Xuda, ji tobedaran û tertemîzan hez dike**."[728]

❁

## BILA NE FANÎ, LÊ BILA YÊN BAQÎ BIZANIN!

Di salên pêşîn ên tarîxa îslamî de li Medîna Mûnewwer kesekî mechûl û nenas her sibeh çiwalên erzaq li ber derîyên feqîran didanî. Sibehekê dema ew feqîr şîyar bûn, meyzandin ku wa ye, erzaq li ber derîyên wan nehatine

728. Beqere, 2/222.

danîn. Dema wan meraq dikir, di wê esnayê de dengekî ğemgîn hate bihîstin û Medîna Mûnewwer bi wefata Hezretê Zeynel Abidîn ê navîyê Hezretê 'Elî -radîyellahû anhû- hejîya, adeta li hev ket. Herkes kete kul û şîneke kûr.

Xelkê Medînê li hemberî vî ewladê Pêğember wezîfeya dawîna xwe bi îtîna û payeğ-pêdan kirin. Dema dor hate şûştina cenazeyê mûbarek ê wî, ew zatê ku vê wezîfeya şerefdar bike, di pişta meyîtî de birînên mezin dîtin ku di wan de av berhev bûbû. Ew ji vê rewşê şaş û metel ma. Wî sebebê wan birînan fehm nekir. Dema wî sedemê wan ji lêzimên wî pirs kir, ji ehlê beytê kesekî ku li wir hazir bû û ji vê rewşa wî re çavnas û aşna bû, jê re wiha got:

"-Hezretê Zeynel Abidîn her sibeh çiwalên erzaq hazir dikirin, li ser pişta xwe didanîn, sibehê hê zûr ew dibirin li ber derîyên feqîran didanîn, nedihişt ti kesî wî bibîne û ew dubare bi şûn de vedigerîya. Xelkê jî nizanîbû kî ew çiwal li ber derîyên wan danîne. Ha ew birînên ku te di pişta wî de dîtin, ji ber hilgirtina wan çiwalan di pişta wî de çêbûne."

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTINEK:

Ha ew kesên ku amelên xwe sirf ji bo rizaya Heq Teala dikin, ew hewl didin amelên xwe ji xelkê veşêrin her wekî ku sirrek be û îfşakirina wî jî heram be. Lewra ew amelên ku sirf ji bo Heq bin, lêbelê li xelkê hatibin erzkirin, di wan de ti fezîletek namîne ku ew xwediyên xwe bibin, bigihînin Xudê Teala. Lewra di serî de jî ucb û ğurûr, hezar û yek cure nefsanîyet wan dide ber xwe û perde li ber wan dikişîne. Ji lewma her amelê salih ê ku di rêya Heq de tê kirin, heke bi fikra «bila ne fanî, lê bila yên baqî wî zanibin!» were kirin, ew meqbûl e û ji bo nivîsandina ecr û mûkafata kirinên wiha jî ne qelem kafî tên, ne jî hibr bi wan re digihe..

Dema mirov hewl bide bi xizmetên semîmî û fedakarane yên xwe bendeyên Xuda memnûn bike, xwezîya me bi wan qehremanên bênav û rasteqîne be!; ku ne ji bo nefsa xwe razî bikin, lêbelê ji bo Heq ji xwe razî bikin, wan karan dikin!

## TI KESÎ HEQÎR/BIÇÛK NEBÎNE!

Tê rîwayetkirin:

“Rojekê Îsa -eleyhisselam- ji navbera zaroyên Îsraîl bi kesekî ku ji terefê xelkê ve salih dihate zenkirin re derketibû ji derveya bajêr. Zilamekî gunehkarê ku di nav xelkê de bi fasiqtîya xwe meşhûr bû jî bi perçiqîneke mezin bi dûv wan ketibû, bi wan re çûbû. Dema ew ji bo bêhnvedana xwe rawestîyan vî evdê gunehkar di nav halê nedamet û mehcûbîyeteke semîmî de wek dilşikestî ji wan cuda li cihekî din rûnişt, penaha xwe bire ber ef û meğfîreta mezina merhemetdartirînê merhemetdaran Heq Teala, lavlav jê kir, dûa jê kir û wiha got:

“-Rebbê min! Bi hurmeta vî pêğemberê mezin ê xwe min efû bike!”

Wî kesê ku ji terefê xelkê ve salih dihate zenkirin jî, dema ferq xiste wî, ew biçûk dît, ew heqîr û nehêja dît, wî jî destên xwe bi asîmanî ve bilind kirin û dûa kir, wiha got:

“-Xudayê min! Sibê li qiyametê min bi vî zilamî re heşr neke!” û wisan penaha xwe dibir ber Xuda.

Vêca Cenabê Heq ji Îsa -eleyhisselam- re wehyî şand, jê re wiha got:

“-Ya Îsa! Ji bendeyên min re bibêje; min dûayên herduyan jî qebûl kirine. Min bendeyê gunehkarê stûxwehrê xwe efû kir û min ew ji cennetîyan kiriye. Herçî ew kes e ku ji terefê xelkê ve salih dihate zen kirin, ji ber ku wî bi xwe nexwest bi evdê min ê ku min ew efûkirî re bibe, min ew ji cennetîyan nekiriye.”

## JI QISEEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Ji derveya wan kesên ku bi ber lanet û ğezeba îlahî ketibin wekî din her bi çi sedemê dibe bila bibe heqîr, biçûk û nehêja dîtina bendeyên Xuda cînayeteke qelbî ye. Herçî ewên ku vê cînayetê dikine, ew qelbên bênesîb, bi kevirbûyî û ji mehebbeta îlahî dûr in. Di esasê xwe de kesek bi heqîrdîtin û biçûkdîtina dîgerên xwe ji nizmkirin û bêqîmetkirina wî bendeyê zêdetir, wî xwe bi xwe nizm û perîşan kiriye.

Çawa Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîfa xwe de gotiye:

بِحَسْبِ امْرِئٍ  مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ

"*Nehêja û heqîrdîtina kesekî ya bira-dînê xwe ji wî re wek guneh bes e.*"[729]

Şair çi xweş dibêje:

*Zahid bi heqaret li ehlê xerabatê nenêre,*
*Wêrane hene ku xwediyê defînê ne!*

❁

## EYBAN JI TI KESÎ RE ÇÊNEKE!

Hemdûn Qessar -quddîse sirruh- dibêje:

"Dema tu mirovekî serxweş bibîne ku ew her dikeve û dîsa radibe birêve diçe, bidiqqet bibe, zinhar eyban ji wî re çêneke! Eger û îhtîmal heye tu jî wekî wî bi heman belayê mûbtela bibî!"

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Di têgihiştina tesewwufî de; di îrşadê de merhemet û şefqet heye; eyb jê re çêkirin, heqîr û nehêja dîtin û rencîdekirina mûxatebê xwe nîn e. Lewra Cenabê Heq eşkere dike ku bendeyê wî sirrek ji qudreta wî ne. Bi vê sedemê wek terzê meyzandina li gunehkarî esil fikr; cewherek ketiye nav herîyê, rizgarkirina wî lazim e.. Herçî heqîr û nehêja dîtina wî ye, dibe ji bo cara duyem zayîkirina cewherê windabûyî! Ji lewma Cenabê Heq, ji bo bendeyên wî nekevin vê xetayê di ayeta pîroz de wiha gotiye:

"**Gelî mûmînan! Bila civakek tinazê xwe li civakeke din neke; dibe ku ew ji wan bi xwe çêtir bin! Bila hinek jin jî tinazê xwe li hinek jinên din nekin! Dibe ku ew jî ji wan bi xwe çêtir bin**.."[730] Cenabê Heq bi vê ayeta pîroz daye zanîn ku di babeta bi mîzan û mûhasebekirina gunehên bendeyên xwe de ew tenê hesabê ji wan dipirse û wî qedeğe kiriye ku însan bikevin vê daîreyê.

Li alîyê din jî bi pirranî hatiye dîtin ku ewên eyban ji dîgerên xwe re çêdikin û wan heqîr û nehêja dibînin jî ketine heman koncal û xetayê. Ev rewş bi vê derbûmeselê hatiye vegotin:

729. Mûslim, Birr, 32.
730. Hucûrat, 49/11.

“Bi cîranê xwe nekene, ewê were serê te jî!”

❁

## KEYFXWEŞKIRINA YÊ SÊWÎ

Serî-yê Seqatî vedibêje:

“Min rojeke cejnê Marûfê Kerxî dît ku wî li kolanan sîsikên xurman berhev dikirin. Min jê pirs kir; tu yê çi ji van sîsikan bikî? Wî ji min re got:

«-Min li vir zarokekî biçûk dît, ew digrî. Ez ji wî nêzîk bûm, dema min jê pirs kir; tu çima digrî? Wî ji min re got; ez sêwî me, wekî cilên hevalên min cilên min nîn in, wekî pêleystikên wan pêleystikên min nîn in. Dubare wî dest bi girî kir. Rewşa wî dağ li kezeba min da. Ji lewma ez van sîsikên xurman berhev dikim. Ezê van bifiroşim û ezê pê cil û pêleystikên ku wî zarokî xwestine, jê re bikirrim...»

Van peyvan dağ li kezeba min jî dan, vêca min tika û rica ji Hezretê Pîr kir, min jê re got:

«-Heke destûra we hebe, ezê bi wî zarokî re elaqedar bibim, bila dilê we rehet bibe!» Piştre min rahişt wî zarokî û min daxwazên wî jê re kirrîn.

Serî-yê Seqatî vî halê ku ew bi bereketa vî amelê salihê xweşik ê xwe pê gihabû, îfade dike, wiha dibêje:

“Bi bereketa vê xizmetê di dilê min de nûreke wisan peyda bû ku ez bi wê jî ji bo halên cipûcuda bi mezher bûm û min çendîn lezzetên manewî çêjandin..”

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Keyfxweşkirina sêwîyan û xwedîtî-kirina li wan amelekî salih e ku ji terefê dînî ve hatiye teşwîqkirin û mekafata wê pirr mezin e. Ev wade û peymana pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vê babetê de xwedî naverokeke wisa ye ku dilên evîndaran mest bike:

“*Ez û ew kesê ku sêwîyekî xwe, yan jî sêwîyekî dîgeran hîmaye bike wê li cennetê wiha li cem hev bibin.*”

Rîwayetkarê hedîsê Malik bin Enes jî wekî ku Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- wisan kiribû, telîyên xwe: Ya şehdê û ya navê şanîdan.[731]

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîseke şerîfa din de wiha dibêje:

"*Heke kesek sirf ji bo rizaya Xuda destê xwe bi ser serê sêwîyekî de bibe û bîne, di hemberî her mûyekî pora wî de ku destê wî li wan ketibe, sewbek jê re heye.*"[732]

Ji destê xwe birin û anîna bi ser serê sêwîyî de ku di hedîsa şerîf de îşaret pê hatiye kirin de meqsûd, ji nêzîk ve bi her meseleyên wî yên maddî û manewî re elaqedarbûn e.

## DOSTANÎ

Sehl bin Îbrahîm wiha vedibêje:

Em bi Îbrahîm bin Edhem re dost bûne. Neqlekê (carekê) ez bi nexweşîyeke giran ketibûm. Vêca Îbrahîm bin Edhem, her tiştê di dest xwe de ji bo sağlemî û sihhata min xerc kir. Piştre min jî destpê kir, ez baş bûm. Min carekê ew xwarin û tiştên ku li xweşîya min diçûn jê xwestin. Ji ber ku tiştek di dest wî de nemabû, wî merkeba xwe firot û arzûya min pê anî cih. Dema ez bi sihheta xwe giham ji bo ez herim cihekî, merkeb ji min re lazim bû, min jê pirs kir, jê re got:

"-Ya Îbrahîm, merkeb li kuderê ye?"

Îbrahîm bin Edhem got:

"-Min ew firot."

Ji ber ku sağlemîya min ne mûsaid bû ez birêve herim, min jê re got:

"-Baş e, lê ezê vêga bi ku ve herim?"

Wî sultanê arifan ji min re got:

"-Birayê min! Tu yê li pişta min siwar bibî." Wî bi dirêjîya mesafeya sê qunağan ez li ser pişta xwe hilgirtim û birim.

731. Mûslim, Zuhd, 42.
732. Ahmed b. Henbel, Musned, V, 250.

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Di rojên tije îzzet û îkram û sipehî û baş de herkes ji hev re dost e. Lêbelê esil dostanî di rojên zor û zehmet de derdikeve holê û bihayê wê bi çi tiştekî nayê pîvanê. Ji lewma sirrê welîtîyê, di rojên vê dinyaya ji çendîn xirabîyan tije de di dostbûna ji bo Xuda, ji bo Resûlê wî û ji bo mûmînên salih de û di dost mana digel wan de ye.

Li alîyê din bi taybetî ew fedakarî û ferağeta ku ji bo birayên hewcedar tê kirin, rahma Cenabê Heq celb dike. Lewra Cenabê Heq, li hemberî bendeyên xwe xwedî rahm û merhemeta bêdawî ye, Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî ji bo aleman wek rahm şandiye.

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di hedîsa şerîf de wiha dibêje:

"*Ellahê Rahman jî şefqet û merhemetê li ehlê rahmê dike.*"[733]

❁

## MEQSÛD JI DOSTANÎYÊ

Hezretê Ebdûllah bin Mûbarek rêwengî bi kesekî xuy-xirab re kiribû. Dema seyaheta wan xilas bûbû û ew ji hev cuda bûbûn Ebdûllah bin Mûbarek dest bi girîyekî ğemgîn ğemgîn kir. Dostên wî li hemberî vî halê wî şaşomaşo bûn, jê pirs kirin, jê re gotin:

"-Tu çima digrî? Ew tişta ku tu ev qeder ğemgîn kirî çi ye?"

Wî dostê Heq ê xwedî wî qedrê mezin, axînek ji dilê xwe kişand û bi çavên hêstirbarîn ji wan re got:

"-Digel ew qeder rêwengî jî min nekarî halên xirab ên hevalê xwe rast bikim. Min nekarî exlaqê wî bêçareyî xweşik bikim. Ez dihizim gelo min ji bo nuqsanîyeke xwe nekarî feydê bigihînim wî? Heke ew ji bo xetayeke min nehatibe ser îstîqametê wê sibehrojê halê min çawa bibe!.." îskeîskên wî di qirika wî de man û wî wilo li ser girîyê xwe berdewam kir.

733. Ebûdawud, Edeb, 58.

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Divê dostanî tim û daîm li ser meqsûdeke bifeyde'ya manewî werin damezirandin. Li gorî vê, divê dostanî û ulfeta bi salihan re ji bo îstîfadekirina ji wan bibe; divê dostanî û ulfeta bi nesalihan re, heta divê dostanî û ulfeta bi wan kesên xwedî kêmasî û ji hêla maneyê ve lawaz re jî ji bo feyde gihandina wan bibe. Lewra ew dostanîyên ku ji feyda manewî dûr û sirf bi ğefletê hatine tesîskirin, maneya wan zirareke wisan e ku ewê herdu dinyayan jî mehû bike. Siviktirîna vê zirarê jî bi mûcibê vê meseleyê wê serencameke wiha:

"Ewê ku li cem hêstira gundewaran raweste, ya wê ji xuyên wê bigre, yan jî wê ji ava wê!" pê bide jîyandin.

Li alîyê din uslûba ku mirov taqîb bike ji bo berê kesên nuqsan yan jî xwedî-kêmasî bide ser îstîqametê, divê li hemberî dîtina encameke menfî ji wan jî ne rencîdekirina wan be; lêbelê divê mirov pêşî hesabê ji nefsa xwe bi xwe bipirse û ji xwe re bibêje; gelo qusûreke min heye?. Lewra heke ji ber xeta û kêmasîyên mirovî, mirov nekarîbe berê mûxatebê xwe bide ser rêya rast, hingê wê hesab û webalê vê zehf giran bibe. Naxwe ğaye ne bûna bi perde ye, lêbelê mirov zanibe perdeyan veke û heqîqetan ji mirovan re şanî bide.

❁

## TESLÎMÎYETA TAM

Li gorî di rîwayetan de hatiye ragihandin, dema Cenabê Heq, Mûsa -eleyhisselam- şand cem Firewn, jê re wiha got:

"**Here cem Firewn; lewra ew zehf har bûye.**."[734]

Mûsa -eleyhisselam- ji ber ku ti kes nedît ferdên malbata xwe û dewarên xwe di zahirî de jê re bi emanet bike, wiha got:

"-Ya Rebbî! Wê çi ji xelkê mala min û dewarên min bibe?"

Vêca Cenabê Heq di bîra wî anî ku «**ez çêtirînê mûhafezakaran im**» û jê re wiha got:

734. Taha, 20/24.

“-Ya Mûsa! Piştî te ez dîtibim wekî din tu çi dixwazî? Tu ji bo bicihanîna fermana min bazbide! Xwe bi min ve girêbide û teslîmîyetê şanî bide! Heke ez bixwazim ezê gur ji bo mêşinên te bikim şivan û ezê ferîşteyên xwe jî ji bo malbata te bikim pasevan.

Ya Mûsa! Ev çi fikr û mitala ne, ku tu dikî? Dema dêya te tu avêtî behrê kî tu xilaskir î? Kî piştre tu gihandî dêya te? Ma te yek bi şaşî nekuştibû û Firewn jî taqîbat bi pey te nexistibû û hewl nedabû ji bo te bikuje; hingê kî tu ji ber wî mûhafezekir î?..”

Mûsa -eleyhisselam- hem li van ên ku hatine gotin guhdarî dikir, hem jî di dawîya her komikê de digot:

“TE, TE, TE YA REBBÎ!..”

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Helbet Mûsa -eleyhisselam- wekî ku hemû pêğemberan di zirweya teslîmîyetê de bûye. Lêbelê ji ber ku her yek ji pêğemberan ji mirovan re şexsîyeteke nimûneyî ne, Cenabê Heq hinek babetên ji bo me mûhîm li ser wan dide tecellîkirin û di rewşa wiha de jî îşaretê pê dide ka emê çawa tevbigerin û dilan îrşad dike. Çawa di vê qisseyê de tişta ku vegotina wê hatiye xwestin, ev beyan kirine; li hemberî fermanên Ellah Teala Rebbê aleman hîç ti mazereteke beşerî derbasdar nabe. Lewra tekane qadirê ku dikare her cure arîkarî, îhsan û mûhafeza ku ewên dixwazin fermanên wî bicih bînin jê re hewce bibin, bide wan her Ew bi xwe ye. Heke bende, bi îxlas û semîmîyet ji rizaya Heq re wek ram ji bo bicihanîna fermanên wî ğeyretê şanî bide, ewê bi çavên serê xwe bibîne ku di her hal û karî de Cenabê Heq jê re yar û arîkar e. Çawa wî Hafizê Mûtleq, Mûsa -eleyhisselam- di seraya Firewn de daye mezinkirin, Îbrahîm -eleyhisselam- di nîvê agirê Nemrûd de di gulistanê de ğerq kiriye, gêncên salih ên ku navê **Eshabê Kehfê** li wan hatiye kirin jî sêsed û çend salan di şikeftekê de di halê xewê de ji şerê zaliman parastine û Mûhemmed Mûstefa -sellellahû eleyhî we sellem- jî ji çendîn tehlûke û xeteran mûhafeza kiriye, bi taybetî di Şikefta Sewrê de ew ji ber çavên neyaran veşartiye..

Şair çi xweş dibêje:

*Ez ji kesî naxwazim înayetê, bila hafizê min be Xuda,*
*Ez tewekkulê dikim: «**Fellahû Xeyrûn hafîza**»*[735]

Seyfî

❁

## WERGIRTINA DÛAYA MÛMÎNÎ

Di rojekê de Marûfê Kerxî bi rojî bûye. Dema ew di wextê ji berêvarê nêzîk de di bazarê de derbas dibû avgerek dît ku wî wiha dûa dikir, digot:

“-Kî ji vê avê vexwe bila Xuda bi rahm û bereketa xwe pê re mûamele bike!” vêca wî rojîya xwe xirab kir û ji bo wergirtina dûaya wî ji bo banga wî îcabet kir. Mirovên pê re bûn, jê re gotin:

“-Ez benî, we çima rojîya xwe xirab kir?”

Hezretê Marûf ji wan re got:

“-Min xwest bigihim bereketa di dûaya avgerî de.”

Di piştî wefata wî de hevalên wî ew di xewna xwe de dîtin û jê pirs kirin:

“-Xuda bi te re çawa mûamele kir?”

Wî bersiva wan da, ji wan re got:

“-Rebbê min, ez bi bereketa wê dûaya xalîsane ya avgerî efû kirim. Bi merhemet bi min re mûamele ferman kir.”

### JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Çendîn ğerîb hene ku dilê wan bi Xuda re ye. Carina jî dûayên wan ji îbadetên nafîle jî bi bandortir e. Lêbelê divê mirov îfade bike; ew rojîyên nafîle yên ku ji ber fezîleteke hê mûhîmtir têne şikandin û xirabkirin, divê piştre dîsa werin qezakirin. Lewra êdî ew di hukmê wacib de ne. Li vir babeta ku vegotina wê hatiye xwestin ev e ku mirov karibe giringtirî, li ser giringî tercîh bike. Lewra dem tê, dibe ku di çendîn tiştên biçûk têne dîtin de feydên mezin

735. Yûsuf, 12/64; “**Ellah çêtirîn mûhafezakar û pasevan e**.”

hebin. Li alîyê din jî çawa çêdibe ku li hinek cihên di halê wêrane de jî çendîn defîne veşartî bin, her wiha di navbera bendeyan de jî çendîn kes hene ku bi zahirê xwe wêrane ne; lêbelê bi batinê xwe mûcewher in. Naxwe divê mirov li hemberî van jî ğafil û bêagah nebe..

Şair çi xweş dibêje:

*Her şevê qedr zanibe, herkesê tu dibînî jî Xizir zanibe;*
*Binêre dîdar li te nazir e, heşt cennetên wî hazir in!..*

Seyfî

Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jî dibêje:

“*Ma ez cennetîyan ji we re bibêjim ka ew kî ne? Ew kes in ku ji ber ew hem lawaz in, hem jî ji terefê xelkê ve jî lawaz têne dîtin, ti kes giringîyê bi wan nade; lêbelê heke ew sûnd bixwin, bibêjin: «Dê wiha çêbibe» wê Ellah Teala daxwazên wan bicih bîne.*

*Ma ez cehennemîyan ji we re bibêjim ka ew kî ne? Ew jî ew kesên mûtekebbir in ku dilhişk, qerase, nemerd in û bi debdebeyî birêve diçin.*”[736]

❁

## MECZÛBEK Û DERMANÊ DIL

Dema Hezretê Bayezîdê Bîstamî derman çêdikir, li hekîmekî rast hat û jê re got:

“-Ya doktor! Bi te re derman ji bo nesağîya min jî heye?”

Hekîm jê pirs kir:

“-Nesağîya te çi ye?”

Hezretê Bayezîd bersiva wî da û jê re got:

“-Nesağîya gunehan e...”

Hekîm destên xwe bi herdu alîyan ve vekirin û jê re got:

“-Ez dermanê nesağîya gunehan nizanim.”

736. Buxarî, Eyman, 9; Mûslim, Cennet, 47.

Di wê hengavê de xortekî meczûb li wir bû, ew jî di peyvdanê de pişkdar bû û got:

“-Bavo, ez dermanê nesağîya te dizanim çi ye.”

Hezretê Bayezîd jî bi keyfxweşî jê re got:

“-Xorto, ji kerema xwe bibêje, ew çi ye!”

Ew xortê ku xelkê ew meczûb dizanî lêbelê ew di rastîyê de arifek bû, dermanê gunehan wiha pênase kir, jê re got:

“-Bi deh dirheman koka tobê û bi deh dirheman pelên îstiğfarê bikirre! Van bixe hawina (sîrkoda) qelbê xwe! Bi sîrkûtkê tewhîdê li wan bide! Wan di bêjinga însafê re bibûrîne! Wan bi hêstirên çavan bistire! Wan di firina evînê de bipijîne! Her roj pênc kevçîyan ji wê macûna ku wiha çêbibe, wergire; ti eser ji nesağîya te namîne!..”

Bayezîdê Bîstamî li van şîretan guhdarî kir, axînek ji hinavê xwe kişand û got:

“-Xwelî li wan kesan be ku ji bo arifên wekî te dîn dibêjin û xwe jî aqilmend zen dikin!..”

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Ji bo bendeyekî dema ji meyzandina xelkê li wî zêdetir meyzandina Heq li wî lipêştir û ewlatir be, jê re rêyên kemalat û îrfanê têne vekirin. Êdî nêrîna wî, bihîstina wî û hisskirina wî sirr û kûrbûnîyeke cipûcuda erz dike. Hinek ji van bendeyên wiha dibin Weysel Qeranî û xelk jî di halekî ğafil de jê re mecnûn-dîn dibêjin û wisan radiwestin. Lêbelê di esilê xwe de ew ji bo dostanîya taybetî ya Xuda û Pêğemberê wî bi mezher bûye.

Li alîyê din ev qisse, bereketa di vê fermana îlahî: «**Bi salihan re bibin!**»[737] de dide xuyakirin. Wekî ku di wî xortê arif de hatiye dîtin, receteyên dilî ku ji temamê salihan dertên ji bo çendîn nesağîyên manewî şîfayê dibexşin û dilan bi awayekî zinde û pak bi Heq ve girêdidin. Li vir Bayezîdê Bîstamî digel ku xwedî qelbekî zindî û agah bû jî dîsa derman xwestina wî, hem tezahureke tewazûya wî ye, hem jî ji bo dermankirina dilê wî hekîmî bûye ku wî pê re sohbet dikir.

❀

737. Tewbe, 9/119.

## HINEK RÛ HENE WEKÎ FERÎŞTEYAN

Em bi Hezretê Merhûm Samî Efendî û bavê merhûmê min Mûsa Efendî -quddîse sirruh- ê bi yawerîya wî re ji Bûrsa'yê ji bo Îstanbûlê vedigerîyan. Emê li Yalovayê ji bo siwarbûna li vapûra erebeyan bi wesaîta xwe biketana rêzedora xwe. Ew ğulamê ku ji bo teşqele çênebin û wesaît bi awayekî birêkûpêk bikevin rêzedora xwe re peywirdar jî dema ji bo ereba me jî cih şanî dida, çavê wî bi Samî Efendî û Mûsa Efendî ket ku ew jî li terefê paş rûniştibûn. Ew bi awayekî şaşomaşo rawestîya. Piştre bi ber me ve nêzîk bû. Ji cama erebê ve hê bidiqqettir ber bi hundur ve meyzand; axîneke kûr kişand û wiha got:

"**Ellah Ellah çi dinyayeke ğerîb e! Hinek rû hene wekî ferîşteyan e.. Hinek rû jî hene wekî yên Nemrûd**.."

## WELHASIL:

Ev bûyer jî şanî dide ku elametê dostbûna ji Xuda re ev e ku Xuda jî bi nûra îlahî ya xwe dilên wan û çehreyên/rûyên wan bi mûnewwer dike. Bi kurtî ewlîyaullah sîmayên mûstesna ne, ku dema ew têne dîtinê Xuda di bîra mirovan tînin. Lewra rêyên wan, rêya Xuda ye. Ew li ser exlaqê Hezretê Mûhemmed Mûstefa -sellellahû eleyhî we sellem- ne ku ew rêberê mezinê karwanê heqîqetê ye. Çawa halekî wî jî ev bû ku wî bi awayekî bêherf û bêpeyv sade bi sîmaya xwe jî (însan) ji bo dînê Xuda gazî dikirin. Ew gazîkerekî wisan bû ku Ebdûllah bin Selam ê ku yek ji alimên bijarde yê cihûyan bû jî dema rûyê çehregulî yê wî dîtibû, gotibû:

"-Ev rû, rûyê derewînî nabe!" û sade bi vê sedemê îman anîbû.[738]

Li ser vî esasî her bende, li her cih û mekanê ku lê birêve biçe, lê bigere û lê geşt û guzerê bike, ew bi musbet be yan jî bi menfî be bi awayekî bêpeyv tim û daîm li hawîrdorên xwe yanî bi halê xwe hinek tiştan dibêje, hezar û yek întîbayan dihêle û -bi diqqet, yan jî bêdiqqet- ji bo awirên bêjimar dibe berpeyv û mûxateb.. Kî dizane dibe ku ew ji terefê çendîn kesên ku ew wan nas nake û ewê nikaribe wan nas bike jî ve li rûniştina wî, li rabûna wî, li axaftina wî, li awira wî û li bizavên wî temaşe dikin, wî diecibînin, wî ji fitreta xwe re guncaw dibînin û wî ji bo xwe bi nimûne dikin..

738. Tirmizî, Qiyame, 42; Ahmed b. Henbel, Musned, V, 451.

Divê were zanîn ku kaînat, serkehnîya neşweya îlahî ye. Ev asêpirsa ku jê re însan tê gotin jî tecellîya xarîqeya neşweya îlahî ye. Salih û kamilên di naveroka neşweya îlahî de jî ew însan in ku hîç ti zemanekî bi mazî/bûrî nabin; lewra ew, di ekam û serencama bûrandina temenekî nimûneyî ji bo însanîyetê de jîyana wan di piştî cesedên wan de jî berdewam dike.

❁

## REWŞA QELBÎ DI XÊRÊ DE

Mûsa Efendî -quddîse sirruh- vedibêje:

"Me bi Hezretê Samî Efendî re rêwengî dikir. Li Urgupê kesekî otomobîla wî wergerand û ji bo xwe dirava çixarê jê xwest. Digel dijberîya sikûtî û huşbûnîya hinek rêhevalên wî jî dîsa wî got:

«-Madem ew dixwaze, divê ez bidimê!» û daxwaza wî anî cih.

Vêca ew feqîr ji ber vê helwesta wî memnûn bû, nîyeta xwe guherand û jê re got:

«-Vêga ezê herim bi vê nan ji xwe re bikirrim.» û bi keyfxweşî ji wir çû, dûr bû.

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Ew bizavên ku sirf ji bo rizaya Xuda têne kirin, tesîra xwe li ser qelbên mûxatebên xwe dikin û exlaqê wan bi xweşik dikin. Ji lewma divê em jibîr nekin ku di xêrên werin kirin de ji rewşa qelbî ya mûxatebê me zêdetir, rewşa qelbî ya me mûhîm e. Pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- di vê babetê de wiha dibêje:

"*(Di wextê xwe de) Zilamekî got:*

*«-Ezê mûheqqeq sedeqekekê bidim.»*

*Wî bi şev rahişte sedeqa xwe, ji mala xwe derket û wî bêagahîya xwe ew xiste destê mirovekî diz. Roja şûn de xelkê bajêr gotin:*

*«-Ha ho gidî! Îşev sedeqe ji bo yekî diz hatiye dayîn!» û dest bi axaftinê kirin.*

*Wî zilamî got:*

*«-Xudayê min! Hemd ji te re be. Ezê mûheqqeq sedeqeyeke din bidim.»*

*Dîsa wî bi şev rahişt sedeqeya xwe, ji mala xwe derket û ew (vê carê bêagahîya xwe) xiste destê fahîşeyekê. Roja şûn de xelkê bajêr gotin:*

*«-Ev ne tişta kirinê ye! Îşev sedeqe ji bo fahîşeyekê hatiye dayîn!» û dest bi gotegotê kirin.*

*Wî zilamî got:*

*«-Xudayê min! Çendan ji bo fahîşeyekê be jî ji ber ku min sedeqe daye hemd ji te re be. Ezê mûheqqeq sedeqeyeke dîtir jî bidim.»*

*Ew şev dîsa wî rahişt sedeqeya xwe, ji mala xwe derket û ew (vê carê bêagahîya xwe) xiste destê zengînekî. Roja şûn de xelkê bajêr (bi heyret) gotin:*

*«-Ev çi kar e! Îşev sedeqe ji bo zengînekî hatiye dayîn!»*

*Wî zilamî got:*

*«-Xudayê min! Çendan ji bo yê diz, ya fahîşe û yê zengîn be jî ji ber ku min sedeqe daye hemd ji te re be.»*

*“ (Ji ber vê îxlasa wî) di xewnê de ji wî zilamî re hate gotin:*

*«-Ew sedeqeya ku te daye yê diz, dibe ku wî ji ber dizîya wî fehêtkar bike û wî jê vegerîne. Fahîşe dibe ku ji kirina xwe vegere û bibe jineke biîffet. Zengîn jî dibe ku ji vê îbret bigre û ji wî malê ku Xuda daye wî li ser hewcedaran belav bike.»”*[739]

Ji lewma ewê ku sedeqe bide, divê ji bo Rebbê xwe di halê şukirê de bibe. Lewra tesîra sedeqê, li gorî îxlasa sedeqebexşî tecellî dike.

❁

## AMELÊ SALIHÊ KU DIÇE BER ERŞÊ ‘ELA

Mirîdekî wî li xizmeta Hezretê Dawudê Taî dimeyzand, rojekê jê re got:

“-Min piçek goşt pijandiye; kerem bikin, werin serê?” Vêca li ser huşbûna seydayê xwe wî bi xwe goşt anî li berê danî.

739. Buxarî, Zekat, 14; Mûslim, Zekat, 78.

Lêbelê Dawudê Taî -quddîse sirruh- li goştê li ber xwe hatî danîn meyzand, pirs kir, got:

“-Ewladê min, ji filan û bêhvan sêwîyan çi xeber heye?”

Mirîd di bara îzharkirina di cihê xwe de nebûna rewşa wan de axînek kişand û jê re wiha got:

“-Ez benî, rewşa wan wekî tu dizanîye!”

Wî dostê mezinê Heq jê re got:

“-Naxwe tu here vî goştî ji wan re bibe!”

Mirîd arzû dikir xwarina ku wî amade kiribû, seydayê wî jê bixwe, ji lewma wî bi rijd û israr jê re wiha got:

“-Ez benî, we jî ji mêj ve goşt nexwariye! (Hûn bixwin)..”

Lêbelê Hezretê Dawudê Taî teklîfa wî qebûl nekir û berdewam jê re wiha got:

“-Kurê min! Heke ez vî goştî bixwim ewê derkeve derve, lêbelê heke ew sêwî wî bixwin, ewê derkeve here ber Erşê ‘Ela!..”

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Ji bo taverojê germ nekirin çawa ne mûmkin be, ji bo rûhên bilind jî dil bi mirovan neşewitîn û li hemberî êş û azarên wan bêhest bûn jî wisan ne mûmkin e. Merhemet cewhereke îlahî ye, hemû alemê dide ber xwe, li serê şamil tê. Dilê dostên Heq jî xezîneyeke xilasneber û neçikihaya merhemetê ye. Di nêrîna wan de, ew kesên ku reğbet û peywendîyên fanî yên ku nefsê xwedî dikin li kenarekî deynin û bi tevgerên sipehî yên ku rûh xwedî dikin amelên xwe bi ebedîkirin, ew qezenca ku ew bidest bixin, hem ebedîtir e, hem jî sipehîtir e.. Bi qîmettirîn karên ku însan li vê dinyayê bidest bixin sade amelên salihên wiha ne. Qezencên din jî emanetên berwext in ku mirov yek bi yek wan bi şûn de dide. Çawa di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

Malbata Resûlê Ekrem mêşinek serjê kiribû. Piştî gellek înfaqan Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- pirs kir, gelo çi ji wê bi şûn de maye? Hezreta Aîşe -radîyellahû anha- jê re got:

“-Sade hestîyê sukra wê maye.”

Vêca pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- jê re got:

*"-(Ya Aîşe!) Naxwe bibêje, hema ji hestîyê sukra wê pê ve tev ji me re maye!"*[740]

❁

## DAÎMÎ FERQ XISTINA HEQQÎYÊ

Hezretê Ebdûlqadir Geylanî halekî ku di serê wî re derbas bûyî wiha vedibêje:

"Rojekê li ber çavên min nûrek peyda bûbû û hemû aso dabû ber xwe. Min çavnêrî dikir ku bibêjim ev çi ye, dengek ji nûrê hat û got:

"-Ya Ebdûlqadir, ez Rebbê te me. Ez ji wan amelên salihên ku te heta îro kirine ew qeder memnûn im ku min ji vêga û pê de jî heram ji te re helal kirine."

Lêbelê hê ev axaftin bidawî nebûyî min fehm kir ku xwediyê vî dengî şeytan -eleyhi'l-lane- ye û min got:

"-Biqeşte, here, ya melûn! Nûra ku te şanî dayî, ji bo min ji tarîtîyeke heta hetayî pê ve ne tiştekî din e."

Vêca şeytan got:

"-Dîsa, bi hikmeta ku Rebbê te ji te re îhsan kiriye, tu ji destê min xilas bûyî! Haleveku min bi vî awayî bi sedan kes ji rê deranîne." û ew ji wir bidûr bû, çû.

Min herdu destên xwe bi dergehê mezin ve vekirin; min di nav fehm-kirina ku ev, keremeke ji Rebbê min e, de ji Cenabê Heq re şukir kirin.

Ji nav cemaetê yekî ku li vî halî guhdarî dikir, ji min pirs kir, got:

"-Ya Ebdûlqadir, te ji ku fehm kir ku ew şeytan e?"

Ebdûlqadir Geylanî -quddîse sirruh- ev bersiv dayê, jê re got:

"-Min ji gotina wî ya; «min heram ji te re helal kirine», fehm kir ku ew şeytan e!.."

740. Tirmizî, Qiyame, 33.

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Di her zeman û her mekanî de hinek mirov hebûne ku kar û xebat kirine ji bo dînê Xuda şîlo û averê bikin. Lêbelê di wan demên ku ev faalîyet gihane qunağa sînorê dawîyê de ji bo her mûmînî farûqîyyet lazim e. Yanî lazimîya ji hev û din veqetandina heq û batilî, rastî û şaşî, xêr û şerê û sipehî û mekrohîyê, giringîyeke hê mezintir qezenc dike. Îro tecellîyên cuda yên qisseya li jorê têne jîyînê û gellek mirovên emanc-xirab -qaşo- erbabê îlmê di nav kar û hewldanan de ne ji bo helalên Îslamê bi heram bikin û heramên wê jî bi helal bikin, bi vî awayî ew kar dikin ji bo zirarê bigihînin komelgehê. Ji lewma bizava fîrasetdar û sifetê farûqîyyetê yê Hezretê Ebdûlqadir Geylanî ji bo me tevan giringîyeke mezin erz dike. Di esasê xwe de destûra Hezretê Geylanî ğayet eşkere ye:

**Cenabê Heq, mafekî ku nedabe pêğemberên xwe, wî mafî bi ti awayî nade dîgerên wan jî. Heke pêğember nizanibin ka çi helal e û çi heram e, çi rast e û çi şaş e, çi sipehî ye û çi mekroh e, vêca wê şeytan û dûvikên wî yên ku di navbera mirovan de navên wan wek zana derbas dibe, wê bêhtir zanibin? Ne xêr**.. Peyvdana Cenabê Heq ji bo ğafilên wiha pirr dijwar e:

“(Ya Resûlê min! Ji wan re) **Bibêje: Ma hûn radibin dînê xwe li Xuda didin hînkirin** (ku ew dîn e, yê ku Xuda ew şandiye)?”[741]

❁

## JI MIN RE KERÎM LAZIM E

Bayezîdê Bîstamî wiha vedibêje:

Rojekê ezê ji çemê Dîclê derbas bibûma, biçûma rexê hemberê. Dema ez gihame ber çêm, herdu rexên Diclê bi yek bûn ji bo rê bidin min. Min derhal xwe berhev kir û ji Diclê re wiha got:

“Sûnd be ku ez bi vê naxapim. Lewra kelekvan bi nîv dirhemî mirovekî derbas dikin û dibin alîyê din. Lêbelê tu amelê min yê sih salan dixwazî! Naxwe ez amelên salihê xwe yê ku min ji bo mehşerê hazir kiriye bi ti awayî li vir bi nîv dirhemê nadim û wî bi zîyan nakim. Ji min re kerîm lazim e, ne keramet!”

741. Hucûrat, 49/16.

## ÎBRET-GIRTIN:

Keramet kirineke ku li xweşîya nefsê diçe. Lêbelê ew meseleyeke ku dostên rastî yên Heq bi hessasîyeteke mezin li serê radiwestin. Lewra li kenarekî danîna kerametê û bedêla tehemmulkirina zehmetîya maweyekê, ya westineke berwext dibe, yan mesrefeke sê-çar qurûşî dibe yan jî ji çavê bendeyan re mechûl û nenas mayîn e. Lêbelê bedêla xwe asêgirtina bi kerametê ve jî carina temamê amelên salih e ku heta wê gavê hatine kirin.. Ev, îflaseke qelbî ye ku însanî destevala dibe alema ebedî. Ji lewma hemû arif, heke Cenabê Heq mirad kiribe ev mûstesna ye, wekî din bi ti awayî meyla xwe nedane kerametê ku maneya wê qezenckirina riza û teqdîra xelkê ye. Lêbelê wan tim û daîm ğeyret kirine ji bo rizaya Xudayê kerîm tehsîl û qezenc bikin.

Di vê meyanê de Sehl bin Ebdûllah et-Tusterî ku yek ji mezinên welîyên Xuda ye, çi xweş dibêje:

“Kerameta ji her kerametê mezintir, guherandina xuyên xirab bi xuyên baş e. Zêdebarî vê jî hinek keramet hene, wekî pêleystikekê ne ku ji bo zarokên digrîn tê dayîn da ku ew pê werin xapîn. Evên ha, ne welî, lêbelê erbabê ğefletê wan arzû dikin. Ew bi wan têne xapîn û gellek mirovan jî pê dixapînin.”

Ji lewma tim û daîm mûhîmtirîn mesele, bicihanîna vê fermana Cenabê Heqq e:

“**Wekî ku ferman li te hatiye kirin xwe rast û durust bike!**”[742]

❁

## BERPIRSÎYA MIROVÊN KU LI PÊŞÎYÊ DIÇIN

Rojekê Hezretê Ebû Henîfe li zarokekî rast hatibû ku ew di nav herîyê de birêve diçû. Bi merhemet û şefqet bevkenî û tebessum jê re kiribû û jê re wiha gotibû:

“-Kurê min! Diqqet bike, bila tu nekevî ha!”

Wî zarokî jî bi çavên xwe yên ku zekawet û besîret ji wan diberiqand li îmam fetilî, ev hembera îbretdar dayê ku ew pirr jê nayê hêvîkirin, jê re wiha got:

742. Hûd, 11/112.

“-Ya îmam! Ketina min besît e, heke ez bikevim, ez bi tenê zirar dibînim. Lêbelê esil hûn diqqet bikin. Lewra heke lingê we bişemite, ewên ku bûne peyrewên we û li dûv we tên jî wê lingê wan bişemite û ewê jî bikevin ku rakirina van tevan pirr zehmet e.”

Îmam ji peyvên vî zarokî re heyran ma, dest bi girî kir û ji talebeyên xwe re wiha got:

“-Heke di mijarekê de delîleke xurttir bigihe we, di wê mijarê de nebin peyrewên min. Di îslamê de ev nîşana kemalê ye. Hezkirina we ji min û bendbûna we bi min bi vî awayî derdikeve holê..”[743]

## ÎBRET-GIRTIN:

Di rêya Heq de di sefa pêşîn de bûn, hem bereketdar e, hem jî mesûlîyetdar e. Lewra ewên ku di sefa pêşîn de bin, çawa sipehîtîyên wan tesîrê li hawîrdorên wan dikin, her wiha şaşîyên wan û mekrohîyên wan jî ji terefê hawîrdorên wan ve rast têne wergirtin û bi awayê teqlîdkirina wan û tetbîqkirina wan ferehvan û belav dibin.. Ji lewma mezinên dîn ên her wekî Îmamê Ezam di fetweyên ku didin de hem ev taybetmendî li ber çavan girtine, hem jî jîyîna xwe jî tim û daîm di nav pîvanên teqwayê de berdewam kirine. Çawa di neqlekê/carekê de dema wî qirêjeke biçûçika di cilê xwe de temîz dikir, mirovên ku ew dîtin, jê dipirsin:

“-Ya Îmam! Bi fetweya ku we daye ev lekeya biçûçik ne qirêjeke wisa ye ku ji bo nimêjê asteng be; çima tu zehmetîyê didî xwe û ji bo jêbirina wê kar dikî?”

Hezretê Îmam dibêje:

“**-Ew fetwe ye, lê ev teqwa ye!**..”

Naxwe dixwaze bila mezin be, dixwaze bila biçûk be, hîç ferq nake, ev tekane destûr e ku her yekî ji berpirsîyên li hemberî bendeyan û berpirsîyên li hemberî Heq di alema ebedî de bi memnûnîyetê wergerîne!.

❁

## ÎCABETA JI BO BANGA XUDA

Hesenê Besrî -quddîse sirruh- wiha dibêje:

743. Haşîyetu Îbn-î Abidîn, I, 217-219, Dîmeşq, 2000.

"Mêşin ji însanî hessastir e. Lewra ew, dema şivan wê bang dike, ew dev ji çêrîyê berdide û diqqeta wê tê birîn. Ji vê heqîqetê, gelo divê ji vî însanî re çi were gotin ku ew îbret nagire û ji banga Xuda re bêgane dimîne?!"

## KURTAHÎYA PEYVÊ:

Bang curecur in. Dema ji kesekî re were gotin "were", heke ewê ku bang dike ne kesekî hezkirî be rewş ferqdar e, heke ew dost be rewş hê ferqdar e, heke ew dêya wî be hê zehf bêhtir ferqdar e, heke ew kesek be ku li cem wî tê hezkirin be, rewş cipûcuda ye.. Naxwe divê îcabeta ji bo banga Xuda, di nav coş û xuroşa dilekî ferqdar de û di halê neşweya teslîmîyetê de bibe. Bi taybetî divê em di şehîna hezkirin û bendbûna bi Heq ve de tim û daîm şewq û heyecana di dilê xwe de li hemberî banga «werin nimêjê!» (heyye elasselahê) ya ku her rojê pênc caran erd û asîmanan tije dike mîzan bikin ka ew çawa ye.. Hezretê Mewlana çi xweş dibêje:

"*Aqilê xwe bide serê xwe! Madem Cenabê Heq te dixwaze, naxwe tu jî li hemberî vê daxwazê serê xwe jî bike ling û bazbide!..*"

"*Lewra gotina wî ya were, mezinatîyê dide însanî. Coş û xuroşîya manewî dide, îhsanên bêdawî dibexşine, mehfûrên ebedî belav dike, sifrên mezin dadimezrîne*."

❁

## EHEMMÎYETA HELALÎYÊ

Yek ji talebeyên zengîn ên ku bi ticaretê ve meşğûl dibû hate cem Ebû Ebbas Nihawendî û jê pirs kir; ez zekata xwe bidim kê wê guncawtir bibe? Ebû Ebbas -quddîse sirruh- jî jê re got:

"-Dilê te di kî de qerar bigre, bide wî!"

Talebeyê wî ev bersiv ji seydayê xwe wergirt û ji cem wî cuda bû, çû, li ser rêya xwe korekî parsek dît. Dilê wî bi wî xweş bû. Kîsikek zêr ku zekata wî bû, deranî û da wî. Wî korî destê xwe li kîsikî paland û ew seh kir, bi keyfxweşî ji wir cuda bû û çû. Roja şûn de talebeyê wî di heman rê de derbas bû, dît ku ew korê berî rojekê zekat dabûyê bi korekî din re diaxive. Ev hevok ji wî korî hatin ber guhê wî:

“-Doh begzadeyekî tam kîsikek zêr dane min. Ez jî çûme meyxanê û min pê têr têr şerab vexwar…”

Vê rewşê bêhna talebeyî teng kir û dilê wî tengav kir. Wî rasterast berê xwe da cem Hezretê Ebû Ebbas û çû balê. Wî yê bûyer tam jê re erz bikira, Ebû Ebbas firsenda axaftinê nedayê, kûmê xwe bi dirhemekê firotibû, ew jê re dirêj kir da ku wê înfaq bike, tenbih li wî kir û jê re got:

“Kesê pêşî derkeve pêşîya te vê dirhemê bide wî!”

Talebeyî nekarî tiştekî bibêje û ji bo wezîfeya jê re hate dayîn bicih bîne, derhal ji wir cuda bû û çû. Wekî ku xwacayê/seydayê wî jê re gotibû ew dirhem da kesê ku pêşî derket pêşîya wî. Lêbelê bi meraqeke ku nava wî bi hev û din ve guvaşt ew bi dûv taqîbkirina wî şexsî ket. Ew zilam çû semtekê ji semtên li kenarê bajêr û kete xirbehekê. Piştre ji bin cilên xwe kewekî mirî deranî û li erdê danî. Ewê tam ji wir cuda bibûya ku ji nişka ve talebe derket pêşîya wî û jê pirs kir, jê re got:

“-Ya agîd! Ji bo Xuda rast bibêje; ev çi hal e! Ev kewê mirî yê ku te avête wir çi ye?”

Dema zilamî ew şexsê ku dirhem dabûyê li pêşberî xwe dît, şiteğalî zor zehmet jê çêbû û ev jê re got:

“-Ev heft roj in ku min tiştek peyda nekiriye ku bibim bi zarokên xwe bidim xwarinê. Min û hevsera xwe sebr dikir, lêbelê zarokên me êdî sebr û tehemmula wan nemabû ku xwe li ber birçîbûnîyê bigrin!.. Digel vê jî ez hîç nikarim parsekîyê bikim û tiştekî ji xelkê bixwazim. Ez di nav hezar û yek êş û azaran de li hev difetilîm, ew kewê ku te dîtî û rizîbû, min ew peyda kir. Ji ber zerûretê min dê ew ji zarokê xwe re bibira ji bo wî bixwin. Min di dilê xwe de lavlav ji Xuda dikir, min wiha digot; “Ya Reb, înayetê li halê min bike!” vêca tu hatî û te ew dirhem da min. Min jî şukir ji Rebbê xwe re kir û min ew kewê ku xirab bûbû, nedihate xwarinê anî avête vê zibilgehê. Ezê vêga herim bazarê û bi dirhema ku te dayî hinek tiştên xwarinê bikirrim..”

Talebe li hemberî vê rewşa wî şaş û metel ma, derhal çû cem Hezretê Ebû Ebbas. Hezretê Pîr, berî talebe tiştekî jê re bibêje, wî ji talebeyê xwe re wiha got:

“-Kurê min! Naxwe te diqqet nekiriye ka tiştekî bişubhe yan jî heram ketiye nav qezenca te yan jî neketiye navê. Ji lewma digel te diqqet kiriye jî

dîsa zekata te çûye ketiye şerabê. Lewra ew tiştên ku têne qezenckirin, ji kud-erê û çawa hatibin bidestxistin, bi heman awayî ji dest dertên jî. Çawa li hem-berî kîsikek zêrên te hikmeta ku dirhemeke tenê ya min ketiye destê însanekî salih jî ev e ku ew bi keda destan yanî ji helalîyê hatiye qezenckirin..”

## JI QISSEYÊ ÎBRET-GIRTIN:

Her tişt bi taybetmendîyên xwe çi musbet bin, çi jî menfî bin, biha qezenc dike, yan jî biha winda dike. Ev rastî, di mijarên helal û heramîyê de hê bêhtir bel û xuya dibin. Ji lewma mirovên berê, di bara mal û milk de gotine:

“Malê ku ji **hey** tê, ji **hû** re diçe!”

Ev hevok bi du maneyan tê. Maneya yekê; ew malê ku ji Xudayê “Heyy” tê, dîsa ji “Hû” re diçe ku ew jî Xuda ye. Maneya duduyan; ew qezencên ku ji hewayê têne bidestxistin, qezencên bişubhe û heram di wan de têkil dibin, dîsa ew bi hewayê ve pûç diçe. Bi kurtî helal ji bo helalîyê dibe wesîle û heram jî ji bo heramîyê dibe sebeb. Çawa di bara eşkerekirina vê rastîyê de Hezretê Ebûbekr Werraq di sohbeteke xwe de wiha gotiye:

“Dema ez sibehan radibim û li mirovan dinêrim; ez fehm dikim kî helal xwariye, û kî jî heram xwariye!.”

Ji wî pirs kirin:

“-Tu çawa vê fehm dikî?”

Wî wiha îzah kir:

“-Her kî sibehê rabe, zimanê xwe bi peyvên pûç, ğeybet û bi kirina çêran meşğûl bike, ez dizanim ku ev hal, ji xureka herama wî tê meydanê. Her kî jî sibehê rabe, zimanê xwe bi zikrê Xuda, bi kelîma tewhîdê û îstiğfaran meşğûl bike, ev hal jî ji xureka helala ku wî xwariye, tê meydanê.. Lewra helal jî heram jî li gorî taybetmendîyên mirovan xwe di kirinên wan de didin xuyakirin..”

❁

## QEZENCA HELAL

Hezretê Ebû Henîfe kesekî zengîn û xwedî serweteke zehf bû. Wî debara xwe bi bazirganî û ticaretê dikir. Lêbelê ji ber ku ew bi îlmê ve meşğûl dibû,

têkilîyên bazirganîyên xwe bi navgîna wekîlê xwe birêve dibirin. Wî jî kontrol dikir ka ew ticareta ku hatiye kirin di nav daîreya helalîyê de bûye, yan jî ne di nav daîreya helalîyê de bûye. Ew di vê babetê de ğayet hessas bû ku neqlekê/carekê wî şirîkê xwe Hefs bin Ebdûrrahman şandibû ji bo qumaş bifiroşe û jê re gotibû:

"-Ya Hefs! Di mal de ev û ew uzr hene. Ji lewma wan ji kirryarî re bibêje û wan ev qeder jî erzan bifiroşe!"

Hefs jî mal bi wî bihayê ku îmam diyarkirî firotibû. Lêbelê uzrê ku têde hebû jibîr kiribû û ji kirryarî re negotibû. Dema Hezretê Ebû Henîfe vê rewşê hîn dibe, ji Hefs bin Ebdûrrahman dipirse, jê re dibêje:

"-Ma tu kirryarê ku qumaş kirriye, nas dikî?"

Çi dema Hefs dîyar kir ku ew kirryarî nas nake, vêca Îmam bi endîşeya ku ewê lekeyê bîne ser qezenca helala wî jî, wî temamê qezenca xwe ya ku ji wî malê hatî firotin bidestxistî, hemû wek sedeqe (li ser feqîr û belengazan) belav kir. Ha ev teqwadarîya wî, ji bo ticareta maddî-manewî ya wî bû bereketeke pirr zêde.

## ÎBRET-GIRTIN:

Ji bo mirov însanekî fehm bike gelo ew kesekî dil-temîz, xwedî-îxlas û ehlê îstîqametê ye, yan jî na, ji îbadetên ku ew eda dike zêdetir, divê mirov lê binêre ka wî ev îbadetên xwe bi kîjan hal û sewîya qelbî eda kirine. Yanî bi taybetî divê mirov li vê diqqet bike ka tevgerên wî ji exlaqê Îslamê re guncaw in û gelo qezenca wî ji helalîyê ye, yan jî na. Di vê meyanê de dema medhê kesekî dihate kirin Hezretê Ûmer -radîyellahû anhû- ji kesê ku pesn dida ev hersê pirs kirine:

"-Te bi wî re hîç cîrantî, yan rêwîtî yan jî ticaret kiriye?"

Dema mûxatebê wî dîyar kir ku wî ev hersê jî pê re nekirine, jê re got:

"-Naxwe pesnê wî nede, lewra tu bi awayekî baş wî nas nakî!"

Ji lewma Sufyanê Sewrî -quddîse sirruh- gotiye:

"Dîndarîya kesekî, bi rêjeya helalîya nanê wî ye."

Rojekê dema jê re gotin:

“- Ez benî, ji kerema xwe fezîleta nimêj-kirina di sefa pêşî de ji me re vebêje?” wî bal kişande ser parîyê helal û wiha bersiv da, got:

“-Birayê min! Tu nanê xwe ji kuderê qezenc dikî, tu li wê binêre! Piştî qezenca te ji helalîyê be, vêca tu kîjan sefê bixwazî di wê de nimêj bike; di vê babetê de ji te re tengasî nîn e.”

Rahmetîyê bavê min Mûsa Efendî -quddîse sirruh- di ticaretê de diqqet-kirina li qezenckirina helal û giringî û bereketa di nav wê de tevlî-nekirina heramîyê de bi vê bûyerê vedigot:

“Cîranekî me yê nemisliman hebû. Piştre misliman bûbû. Rojekê dema min sebebê bi hîdayetê gihiştina wî jê pirs kir, wî ev ji min re got:

«-Li Acibademê Reb‘î Molla zevîya wî li cem zevîya me bû, yanî ew cîranê me bû, ha ez bi navgîna exlaqê xweş ê wî yê di ticaretê de misliman bûm. Molla Reb‘î zatek bû şîr difirot û debara xwe pê dikir. Ew wextekî êvarê hate bal me û got:

“-Kerem bikin, bila ev şîr ji we re be!”

Ez şaşomaşo bûm, min jê re got:

“-Çawa çêdibe? Min şîr ji we nexwestiye!

Wî însanê hessas û zarîf got:

“-Min ferq nexistibûyê, lê min heywanek ji heywanên xwe dît ku ew çûbû nav bexçê we û li nav diçêrî. Ji lewma bila ev şîr ji we re be. Ji bilî vê jî heta dewreya tehewwilata (temamê wê çêrîya ku ji bexçê we xwariye jê biçe here) wê xilas bibe, ezê şîrê wê ji we re bînim..”

Heke çi qeder min jê re got:

“-Ev çi gotin e? Ma wê ne giya xwariye? Bila helal be!..”

Molla Reb‘î got:

“-Na, na, wisan nabe! Şîrê wê heqê we ye!.” û heta dewreya tehewwilata wê heywanê xilas bû, wî şîrê wê her ji me re anî.

Ha vê bizava wî zatê mûbarek pirr zêde bandora xwe li min kir. Di encamê de wî perdeyên ğefletê ji ber çavên min rakirin û taveroja hîdayetê di nav min de hilat. Min ji xwe bi xwe re got:

"**-Dînê însanekî wiha exlaq-mezin, mûheqqeq dînekî mezin e**. Ji rastbûnîya dînê ku însanên wiha zarîf, heqnas, mûkemmel û tertemîz digihîne hîç şubhe nayê kirin!" û min kelîma şehadetê anî û ez misliman bûm.»"

Ev qisseyên hikmetdar bi awayekî bariz li holê datînin ku divê em di bara mijara qezenca helal û heram de çi qeder titîz û biîhtiyat bibin. Lewra qezenca helal, bingeheke esasî ji hîmên teqwayê ye. Li ser vî esasî di hedîsa şerîf de hatiye gotin:

"*Bazirganê rastgo, durust û pêbawer; bi pêğemberan, siddîqan û şehîdan re ye*."[744]

Lewra bazirganekî dil hessas ê ku sifetê bûna bi pêğemberan, siddîqan û şehîdan re qezenc kiribe, ji bo dorhêlên xwe dibe wesîleya hizûr û bereketê, û ji bo xwe jî mezherîyeta seadeta dinya û axretê herduyan bidest dixe. Lêbelê ewên ku ji bo îhtîrasên dinyayî meğlûb bûbin, heke çi qeder li vê alemê wekî ku seltenetê diajon werin dîtin jî lê dîsa ew nikarin xwe ji bûna bi sefîl û hejarê alema ebedî û bêdawî xilas bikin.

Resûlê Ekrem -sellellahû eleyhî we sellem- wiha gotiye:

"*Wê zemanekî wilo were ku ji însanî re ne ğem be ka wî malê xwe ji helalîyê, yan jî ji heramîyê qezenc kiriye*."[745]

Welhasil, wekî ku di hedîsa şerîf de îşaret pê hatiye dayîn; heke çi qeder ğeflet pirr zêde xuya bibin û dil hewl bidin heramîyan terk bikin jî lêbelê ew bi xwe dilan terk nakin. Naxwe di roja me de li ber çavan girtina helalîyê giringtirîn mesele û mezintirîn îbadet e..

Dema mirov vî îbadetê mezin bicih bîne jî ew qelbên ku karibin ji fermana Xuda re îtaet, teslîmîyet û rizayê şanî bidin, wekî wan gulên ku xwe ji navbera strîyan selixandibin û reng bi reng gul vekiribin, ew ji bo xêr û feyzê dibin serkehnî. Bi berevajî vê ew qelbên ku xwe di tiştên bişubhe û heram de noq kiribin jî bi berevajî gulan wekî ku ketibin navbera strîyan, ji bo hezar û yek xirabîyan dibin serkehnî û heta ji bo bêexlaqîyan jî dibin hêlîn. Cenabê Heq mûhafeze bike!

Amîn!..

744. Tirmizî, Buyû, 4.
745. Buxarî, Buyû, 7, 23.

**Tesewwuf halek e, bes yê ku ta‘m jê xwaribe wî dizane!..**

## XULASE

Cenabê Heq, ji Mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re gotiye:

"(Ya Resûlê min!) **Cerbraîl ew** (Qur'an) **li ser qelbê te peya kiriye ji bo tu bibî ji şîyarkeran**."[746] Di vê gotina Heq Teala de bêjimar hikmet hene.

Kurtahîya van hikmetan jî ev rastî ye ku hemû zanîn û malûmat, bi taybetî îlmê îlahî û îrfan, bes di keş û hewaya dil de neşw û nemayê ji xwe re peyda dikin. Yanî her heqîqeta îlmî; bi wasîteya qelban ku ew jî di halê serkehnîya eşq, wecd û feyzê de mane û sipehîtîyên derûnî faş dikin. Di vê meyanê de nêrîna tesewwufê hatiye çespandin ku ew jî wiha dibêje:

"Îlm esas e, lêbelê emanca vî esasî jî amelê salih e. Ev jî bi kurtî di sirra **tazîm lî-emrillah** (bi tazîmeke mezin bicihanîna fermana Xuda), **şefqet lî-xelqillah** (şeqet û merhemetkirina li hemû mexlûqatên Xuda) de veşartî ye. Di rewşeke berevajî de îlm, ji kulfeteke bêfeyde îbaret e."

Wate hemû zanînên kitêbî di heqîqetê de dişibihe tuxmekî. Çawa tuxm, dema di nav axê de neyên çandin û sade di depoyê de bimînin çendan sal û zeman jî bi ser de bibûrin dîsa ji tuxm pê ve nabin tiştekî din, zanînên kitêbî jî dema di setre-nivîsan de yan jî di refan de bimînin rewş aynî ye. Di hemberî vê de ew tuxmên ku di nav axê de hatibin çandin jî li gorî wesfên xwe mezin dibin, dipijiqin, hinek ji wan wekî darçinaran zehf mezin û bilind dibin. Aynî wekî di vî şeklî de tuxmên îlmî yên ku di axa dil de hatibin çandin jî her yekî ji qelban dikine bexçeyekî manewîyatê ku fêkîyên rastî yên îlm û îrfanê ew dem têne bidestxistin.

Ji lewma Qur'ana Pîroz, ji bo singa mûbareka pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- hatiye peyakirin. Eshabê kîram jî îrşadên îlahî û malûmat ji setre-nivîsan zêdetir, ji alema dilî ya Nûra Hebûnê xwendine. Bi vî

746. Şûera, 26/193-194.

awayî çavên wan û dilên wan, bi çendîn tecellîyên ulwî û bêhempa yên kelamê îlahî yê di wê singa mûbarek de nûrdar bûne û heqîqetên ulwî û derûnîyên Îslamê û sirr û hikmetên wê bi hemû sipehîtîyên wê ve di rûhên wan de hatine xuyakirin. Wate eshabê kîram, ji karektêr û şexsîyeta mûstesna ya pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- re ku Qur'aneke zindî bû, heyran mane, îman pê anîne û ew li hawîrdorên wî bûne perperîk û perwane. Ha tesewwufê jî para xwe ji vê eks û xuyabûnîyê wergirtiye û jîyîna Îslamîyetê di keş û hewaya rûhanîyet û feyzê de ji xwe re bi destûr kiriye; çîk û tîrêjên nûranî ji dilê Hezretê pêğemberê Xuda -sellellahû eleyhî we sellem- ku ew serkehnîya nûrê ye, xwe di ewlîyaullah de dane xuyakirin û wan jî her ğeyret kiriye û hewl daye ku wan ji bo sedsalan û neslan biguhêzin, bigihînin.

Ji vê cîhetê ve alîyê dînî yê fetweyan sitûnên bingehîn ê avahîyekê ne, alîyê teqwayê jî regez û unsurên sipehîtî û zarafetê ne, ku beşên li dora wan sitûnan temam dikin. Tesewwuf ji alîyekî ve van herdu taybetmendîyan biyek dike, ji alîyê din ve jî bi îlawe li ser amelê sipehî û mûkemmelîyeta exlaqî; însan, jîyan û kaînatê eşkere dike, bi hikmeteke hê ferehtir îdrak û îfaya berpirsîyan dabîn dike. Li ser vî esasî tesewwuf, di babeta mehebbetullah û marîfetullah de di mahîyeta pencereyeke manewî de ye ku ew ji bendeyan re ji dilên wan ber bi mîracê ve hatiye vekirin.

Wekî ku me îzah kir, tesewwuf ev e ku em Îslamê bi pîvanên îxlas, teqwa, zuhd, îhsan, mûraqebe, semîmîyet, teslîmîyet û mehebbetê bijîn. Giringtirîn mijara tesewwufê jî ji vegotina van heqîqetan zêdetir, bi qeder îmkan û amadekarîya xwe dan xuyakirina wan di jîyana xwe de ye. Di serî de alimên salih di piştî her wa'iz û nesîhetê de û di piştî vegotina her yekî ji sipehîtîya îlahî û exlaqê hemîde de gotine:

"**Gotin hêsan e, guhdarî-kirin hêsan e; lêbelê bi mûqtezaya wan amel-kirin pirr zor e!**.."

Dema em ji vê pencereyê ve binêrin, naxwe nivîsandin hêsan e, xwendin jî hêsan e. Lêbelê bi mûcibê wan jîyîn û bi elametên farîqeyên jîyana xwe kirina wan sipehîtîyan pirr zor û asêpirs e. Yanî kelîmeyeke kurta wekî «**sebr bike**» ne ziman ji gotina wê, ne guh ji guhdarîkirina li wê, ne jî çav ji xwendina wê diweste.. Lêbelê dema tecellîya vê kelîmeyê di wan dilan de bibe mewzûbehs û mijara axaftinê ku bi bêjimar derd, çendîn êşên giran, îzdîrab, hezar û yek îbtîla û curecur tengasîyan re rûbirû mane, hingê însan adeta di nav xwîn û xwêhdanê de dimînin û pirr caran jî bêsebrîyê tercîh dikin.. Ji lewma mesele

tev, ne sade hînbûna agahîyên tesewwufî û dan hînkirina wan e; lêbelê em karibin her yekî ji wan ji bo dilên xwe bikin îksîreke jîyan û dilşadîyê.

Lewra Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de dibêje:

"**Ew Xudayê ku jîyan û mirin aferandiye ji bo we îmtîhan bike ka kî ji we bêhtir amelên sipehî dike**.."[747] û ew bendeyên xwe ji bo kirina amelên salih bang dike.

Heke mirov bala xwe bide serê, di ayeta pîroz de îfadeyeke wekî "**sipehîtir hîn bibe**" yan "**sipehîtir vebêje**" yan jî "**sipehîtir guhdarî bike**" nehatiye bikaranîn. Bi berevajî van, vê heqîqetê dibêje; "**kî ji we bêhtir amelên sipehî dike, kî ji we bêhtir evdînîya sipehîtir dike û amelên salih dike.**"

Ji lewma emanca bingehîna tesewwufî; bi zemzema îrfanê, bi kewsera teqwayê û bi ava jîyanê ya eşq û mehebbetê ğunçeyên dilî hêşîn û geş bike, nehêle ku bende di vê dinyaya çola ğefletê de bikevin xusranê û wan wasilê îllellah bike. Naxwe ew kesên ku van heqîqetan fehm dikin û dijîn, tesewwuf jî fehm kirine û jîyane. Wekî ku mezinên tesewwufê gotine:

"**Tesewwuf halek e, bes yê ku ta'm jê xwaribe, wî dizane!**.."

Welhasil ew cewhera ku heta bi vir me xwestiye di bara tesewwufê de bibêjin, bi awayê sipehîtirîn evdînîya ji Xuda re û hazirîya ciddî ji bo alema ebedî ye.. Yanî tesewwuf ev e ku mirov karibe bi awayê sipehîtirîn evdînîyê bijî. Lewra Cenabê Heq, însan aferandiye ji bo evdînîyê ji wî re bike. Ji lewma tesewwuf, astengan ji ber wê evdînîyê radike û îmkanan ji bo bicihanîna evdînîyê dabîn dike. Ew çendîn birînan dipêçe, çendîn axên ziwa bi gulistan û şipûşîn dike û çendîn dilên wêran bi serayeke ava dike. Bi kurtî tesewwuf, rêyeke nûranî ye, dema bende ji vê alema ğerîbîyê koç dike û diçe alema wusletê, ew dike ku bende li cem Heq ji bo rutbe û îltîfata «**nîmelebdû**» «**çi xweş bende ye!**» bi mezher dike.

Mesele tev ev e ku mirov karibe xwe ji ezperestîya nefsanî û îddîaya xwe biselixîne û karibe li hemberî ezameta îlahî di **halê hîçîtî**yê de bijî. Ev hissîyat, halekî wisan ulwî ye ku bêçaretî û tewekkulê li bendeyî talîm dike ku ew jî dilan bi ber zirweyên kemalatê ve bilind dikin. Ew dilên ku di seraya hîçîtîyê de dijîn, hîç ti zemanekî nakevin mehrûmîyet û zilletê; bi berevajî vê,

747. 67/2.

ew bi qeder ku di nav weqaretê de kirasên tewazû û mehwîyetê lixwe kiribin li cem Heq digihin mezinahîyan. Şair çi xweş dibêje:

*Bi mezhera feyzê nabe heta nekeve xakê nebat*

*Ewê mûtewazî be rahma Rahman wî mezin dike*

"*Giya heta bi sirra mehwîyetê wek tuxm nekeve nav axê, ji bo feyz, dest-ferehî û bereketê nabe mezher û xuyageh. Lêbelê ewê ku mûtewazî be, yanî ewê ku di halê hîçîtîyê de bi axê re biyek bibe jî rahma Rahman bi xwe wî mezin dike, wî ji bo hezar û yek bereketan bi mezher dike..*"

**Ya Rebbî! Me jî bike ji wan bendeyên xwe ku te bi gotina xwe «çi xweş bende ye!» teltîf kirine. Xudayê min! Me di keş û hewaya hîçîtîyê de bibe hizûra xwe û wan dilên me jî ku em kar dikin ji bo wan ji hişkesalîya ezperestî û îddîayê biparêzin bi rahma bêdawîya xwe şipûşîn bike! Peyvên me bi cewherên me re, cewherên me jî bi peyvên me re ahengdar bike! Ğunçeyên heqîqetê ku me cesaret kiriye wek tecellîya sifetê bêdawîyê kelamî yê Te bi qelema naçîzane binivîsin di dilên me de hêşîn bike! Me tevan bike ji hezkirîyên xwe, me bixe nav zumreya salihan û me bi wan re heşr bike! Me ji şopa nûrdara Hezretê Pêğember cuda neke! Me ji bo şefaeta mezina wî bi mezher bike! Hal û exlaqê bi te xweş be ji me re îhsan bike û me daîm ji bo kirina amelên bi te xweş be serfiraz bike! Hemû hissên me bi rizaya şerîfa xwe te'lîf bike! Me ji hal û tevgerên bi te ne xweş bin, dûr bike! Heta bi nefesa dawîya me jî me li ser sîrata mûsteqîmê bide jîyandin! Vê berhema naçîza me ji bo xêrê, hîdayet, hikmet, heqîqet û marîfetê biwesîle bike!**

**Amîn!..**

# FERHENG

**A-a**

**Abad**: Ava, avedan, avasaz, mamûr.

**Abûs**: Rûtirş, rûqermiçî, madê xwe kirî.

**Ecz, eczîyet**: **1**. Rewşa hêz-têrê nekirinê, bêqewetî, bêîqtîdarî. **2**. Biserneketî, binketî.

**Afaqî**: **1**. Axaftina ku tê kirin û bi mijareke diyarkirî ve bend nebe, ji aş û bajar diaxive, tevlîhev dike. **2**. Objektîf, rastîyê wekî heyî qebûl dike, ya ji tiştekî re aîd.

**Agah**: Zana, xeberdar, şiyar, şûm, arif.

**Eğyar**: Geljimareya **ğeyr** e. **1**. Ecnebîyan, biyanîyan, bêganeyan. **2**. Ewên ku ji jîyana tesewwifî re ne aşîna ne, ne çavnas in.

**Ehkam**: Geljimareya **hukm** e. Hukman, darazan, fermanan.

**Ehkamê şer'î**: Hukm û fermanên dînî, şer'î, olî.

**Exlaqê hemîde**: Xuyên xweş ên ku medhê wan tê kirin.

**Di aqeba wê de**: Di pey re, piştre derhal, rêza dûvre.

**Aksûlamel**: Bertek, berepê, reaksîyon.

**Al**: Malbat, binemal, ewlad, nifş, ezbet, famîle, sulale, xanedan, aîle.

**A'la 'îllîyyîn**: Balatirîn tebeqa cennetê, bilindtirîn meqam li cennetê.

**Aleyhimasselam**: Silava Xuda li wan herdu kesan be!

**Aleyhisselam**: Silava Xuda lê be!

**Amade**: Hazir, hatî hazirkirin, li benda fermanê, li ber emr, vebohtî, mûheyya.

**Amelîye**: Ew karê ku ji bo ğayekeke diyarkirî, bi şert û şeklên diyarkirî hatibe kirin.

**Amil**: Kartêker, bandorker, sersebeb.

**An'ane**: Ûrf û adetên ku ji nifşekê ji bo nifşeke din têne guhastin. Kevneşopî.

**Apolet**: Ew pembû û hirîya ku di unîformayên leşkerî de li beşa ser milan tê xistin. Ew li gorî rutbeya wan jî guhertinê şanî dide. Ew di hinek cilên sivîlan de jî cih digre.

**Arizî**: **1**. Piştre derketiye holê. **2**. Berwext, demî, demkî.

**Erş**: **1**. Text, ban, çetr. **2**. Ew tiştê ku bi sebeb bilindîya xwe temamê cisman di xwe de dihewîne û Xuda li serê îstîwa kiriye. **3**. Asîmanê nehan ku têde qudret û ezameta Xuda tê xuyanê, bilindtirîn qata asîmanan.

**Hêsan kirin**: Rehetkirin, besîtkirin.

**Eşkere**: Vekirî, li holê, diyar, bi çavan tê dîtin, xuya, alenî, zahir.

**Amî, ewam**: Pirranîya mirovan, giştîya însanîyetê.

**Ewdet**: Bi şûn de hatin, vegerîn, hatinve.

**Azade**: Serbest, rizgar, ji qeyd û bendan xilas bûyî.

**B,b**

**Bexş kirin**: bexişandin, îhsan, dan.

**Banî**: Damezirîner, sazkar, çêker, çespîner, avakar.

**Barîgeh**: Cihê ketinê, dîwana bala.

**Betha**: **1**. Newala bi kevir. **2**. Gelîyê di navbera du çîyayan de. **3**. Newala li Mekkeha mûkerrem. **4**. Mekkeha mûkerrem.

**Batin**: **1**. Hundur. **2**. Rûyê hundurîn. **3**. Bi dizîkahî, tişta ku nayê dîtin.

**Batinî**: **1**. Bizava veşartî û ğaye nedîyar. **2**. Ya ji batin re aîd.

**Bedîî**: **1**. Sipehî. **2**. Sipehîtî, xweşikahî.

**Behîmî**: Bi heywankî, hesta sewalî, neînsanî.

**Belağet**: Zanista rêz û rêçên edebîyatê. Tekûzîya di peyv û nivîsê de, îfadeya bihuner û bibandor.

**Berekat**: Geljimareya bereketê ye. **1**. Boşahîyan, ferehvanîyan. **2**. Xêran, xweşîyan.

**Berî**: **1**. Xilasbûyî, azade, salim. **2**. Bêxeta, bêqebahet, bêqusûr.

**Besmele**: Kurte-awayê Bismillahî'yê ye.

**Beşaret**: Mizgînî, xebera dilxweşker, mujdebexşî.

**Beşerîyet**: Însanîyet, mirovatî, kurên însanî, kurên Adem.

**Beyhûde**: Pûç, bêhavil, bêencam, bêmane.

**Begzade**: **1**. Kurê beg, pismîr, kuremîr. **2**. Zadegan, esilzade, kurebav. **3**. Kurê padîşahên Osmanîyan.

**Bid'at**: **1**. Tişta ku piştre derketiye holê. **2**. Tişta ku di piştî serdema mezinê me pêğember de di dîn de derketiye rastê.

**Bêgane**: **1**. Bîyanî, nenas. **2**. Bêelaqe.

**Bi'set**: **1**. Şandin. **2**. Ji terefê Xuda ve şandina pêğember da ku dînê heq ji mirovan re teblîğ bike.

**Bêzar**: Bêziman, nerehet, reht, bêhntengî, ğeyidî, anirî.

**C,c**

**Caliba diqqetê**: Balkêş, dêhnkêş.

**Carî**: **1**. Derbasdar, di rewacê de, di merîyetê de. **2**. Ya ku diherike, dikişe.

**Ceddê mûkerrem**: Bapîrê rêzdar, kalê xweşdivî.

**Cehd**: Ked, xebat, hewldan.

**Celadet**: Agîdî, lehengî, nebezî, kotanî, qehremanî, gernasî, metanet.

**Celalî**: **1**. Ya sifetên celalî yên Xuda. **2**. Mîzaca celalî, dijwarî û mezinatî.

**Celb**: **1**. Anîn, kişandin. **2**. Banga nivîskî.

**Cemala bikemal**: **1**. Sipehîtîyeke xwedan kemal. **2**. Cemala îlahî. **3**. Tecellîyên rahmê yên wekî lutf, îhsan û kerema Cenabê Heq.

**Cemala îlahî**: Sipehîtîya bêdawîya Heq Teala.

**Cemalî**: **1**. Tişta ku ya sifetên cemala Xuda ye. **2**. Mirovê ku bi mîzaca xwe xwedî cemal e, sipehî ye, lutfkar e, dilovan e, merhemetmend e.

**Cemîl**: Sipehî, bedew, xweşik, xwedî husn û cemal.

**Cesîm**: Gir, beden-mezin, gewde-nehît, mezin, gizir.

**Cewaz**: Caiz bûn, derbasdarî, îzn, ruxset, destûr, mûsaede.

**Cewher**: **1**. Rasteqîne, xwe, esas, havên. **2**. Bi serê xwe, ji xwe bi xwe bi heyinê hatiye, ji bo bûna xwe îhtiyaca wî bi yekî din nîn e, heybera esil. **3**. Cibillîyet, xesleta ku ji nijadê tê, îstîdada siriştî. **4**. Kevirê biqîmet. **5**. Nefesa îlahî ya ku heyinê dide qezenckirin.

**Cewwal**: Pirr bi hereket, zindî, herkbar, lebatok.

**Cewwalîyet**: Zehf bi hereketîtî, zindîtî, herkbarîtî.

**Cîdal**: **1**. Pevçûn, têkoşîn, ceng. **2**. Mûnaqeşe, axaftina dijwar û agirîn.

**Cîhanşimûl**: **1**. Her cihî dide ber xwe. **2**. Di çapa dinyayê de, di pîvana dinyayê de, alem-giştî, dinya-tevî, gerdûn-tevî.

**Cîhet**: **1**. Alî, teref, dîtin, alîyê dîtin-nêrîna wî. **2**. Wesîle. **3**. Derdor.

**Cismanîyet**: Bi cism re elaqedar, maddîyat.

**Curm**: Sûcê ku cezakirinê lazim dike.

**D,d**

**Dalalet**: Averêtî, ji hîdayetê, ji rêya rast cuda-bûn, har-bûn, bi batilî ve meyldan, jirêderketin, rêşaşbûn, rêberzebûn, rêwindabûn.

**Darûlbeqa**: Mala nemirinê, xanîyê ebedîyetê, axret, warê herûherîyê.

**Desitanî**: **1**. Bi awayê ji lehengên destanê re layiq, bi qehremanî. **2**. Bi destanê re têkildar.

**Derc-kirin**: **1**. Komkirin, berhevkirin. **2**. Xistin navbera tiştekê.

**Dereke:** Qata ji her qatê berjêrtir.

**Li meydanê**: Li navberê, ya li meydanê; li holê hatiye danîn.

**Dersa ‘am**: Ew kesê ku selahîyeta wî heye, dikare dersê bide şagirtan, bide bi ehlê medresê û bide her kesî.
**Derûn**: **1**. Hundurîn, di hundur de. **2**. Qelb, dil.
**Derûnî**: Ji hundurîn, ji dil.
**Desîse**: Hîle, leystik, riste, dek û dolab.
**Dîdar**: **1**. Rû, çehre. **2**. Dîtin, hevdîtin. **3**. Hêza dîtinê, çav.
**Dîgerğem**: Ewê ku dîgeran dihizire, ğema ğeyrên xwe dixwe.
**Dîrayet**: Zeka, agahî, têgihiştin, fehmkirin.
**Dûçar**: Giriftar bûye, mûbtela bûye, hatiye girtin.

### E,e

**Efzel**: **1**. Zehf bi fezîlet, di dereceyeke bala de. **2**. Ji bo tercîhê şayan e.
**Ehwen**: **1**. Siviktir, kêm zirartir. **2**. Xirabîya wî kêmtir. **3**. Nizmtir, erzantir.
**Ehlûllah**: Ehlê Xuda, welî, ewlîya, însanên ji Xuda nêzîk.
**Emîn**: **1**. Pêbawer. **2**. Ewê ku wek binbirr û qet‘î dizane. **3**. Ewê ku jê re hatine biemanetkirin.
**Enanîyet**: Ezperestî, xwedbînî, xweğemî, egoîstî.
**Enfûsî**: Ew hizra ku di nefsê de tê meydanê. Subjektîf.
**Esma**: Geljimareya îsm e. Yanî navan.
**Esmaû’l-husna**: Navên sipehî yên Xuda.
**Etba‘**: **1**. Ewên ku dibin peyrew, pêbendan. **2**. Ğulaman, xizmetkaran, çakaran. **3**. Terefdaran, alîkaran, alîgiran.
**Ewla**: **1**. Yekem, ewê ku li pêştir tê. **2**. Baştir, guncawtir, layiqtir, mûnasibtir.
**Ewsaf**: Geljimareya wesf e. Yanî wesfan, sifetan.
**Ezwacê tahîrat**: **Ezwac**, geljimareya zewc e, bi maneya hevser û hevjîn e. **Tahîrat** jî geljimareya **tahîre** ye, bi maneya paqijan e. Yanî xanimên pak ên Mezinê me pêğemberê Xuda, dêyên mûmînan.

### F,f

**Fexr**: Şehnazî, pesn hatin dayîn, ew tiştê ku ji bo pesnê xwe danê dibe wesîle.
**Faîlê mûtleq**: Xudê Teala yê ku xwediyê rasteqînê yê fîîla ye.
**Fanos**: **1**. Berga camî ya wekî bangor. **2**. Fenera mezina ku têde mûm tê şewitandin, mûhafeza bicam.
**Fereza**: **1**. Em ferz bikin ku, ferz bikin ku, em bigrin ku, bijimêrin ku, em hesab bikin ku. **2**. Behsa xeberê, hatina peyvê, hatina şorê.
**Fariq** = **Farîqa**: Ferqkar, cudakar, cihêkar, veqetîner.
**Fasid**: **1**. Xirab, nebaş, şaş, rizîyayî. **2**. Mûnafiq, fesadkar, gellac, têkdaner.
**Faş kirin**: Eşkere kirin, derxistin meydanê, îfşa kirin.
**Faîq**: Ewê di ser de, ewê ku ji hêla manewî ve bilind e.
**Ferağet**: **1**. Ewê ku bi rizaya xwe dest ji mafê xwe berdide. **2**. Dest ji dozê berdan. **3**. Efû kirin.
**Fer‘î**: 1. Ewê ku ne esilî ye, qismî ye, di dereca duduyan de ye. 2. Teferrûat, kitekiteyî. **3**. Şağ, ta, çiqil.
**Fesahet**: Ji hêla bêje, mane, aheng û rêzkirinê ve bêqusûrîya peyvê. Bi awayekî rast, zelal, vekirî û herkbar bikaranîna zimanî ye.
**Fetha mûbîn**: Fetha eşkere, serkeftina qet‘î.
**Feweran**: **1**. Kelîn, ğeleyan kirin. **2**. Lêdan (rayan). **3**. Verêhtin (a avê). **4**. (bi hiddet) kefdan.
**Feyyaz**: **1**. Navek ji navên Xuda ye. Maneya wê, ew Xuda yê ku feyz, bereket û boşahîyê dide. **2**. Ew kesê ku nava wî zehf temîz û ew comerd e. **3**. Ew lehîya ku bi ser ve diçe.
**Feyz**: **1**. Çêja manewî; aramîya dil. **2**. Boşahî, mişeyî, berhemdarî. **3**. Gihan û pêşveçûn. **4**. Kişîn û biserveçûna avê.
**Feyzbîn**: Ewê ku feyz û xêrê dibîne.

**Fiqh**: **1**. Zanîna tiştekî bi awayê layiq, wek hestdar fehmkirin, têgihiştin. 2. Hiqûqê Îslamî.

**Fiqhî**: Bi fiqhê re, bi hiqûqê îslamî re têkildar.

**Fisq**: 1. Ji rêya Heq, yan jî ji rêya heq derketin, li hemberî Xuda nankorî kirin û îsyan kirin. **2**. Noqbûna di sefahetê de. **3**. Xîyanet. **4**. Bêolî, bêexlaqî.

**Fitret**: Aferandinî, tabîat, sirişt.

**Fiîlîyat**: Ew tiştên ku bi fiêlî hatine kirin, hatine çêkirin, bi gotinê tenê nemane.

**Fîraq**: Cudabûn, hicran, ji hev cudabûna dostan.

**Fîraset**: Fehm, têgihiştin, qabilîyeta hisskirinê.

**Ficûr**: **1**. Guneh, zina. **2**. Gunehkarî, ketina sewîya exlaqî û rewîştî.

**Fitûhat**: Geljimareya fethê ye. Bi maneya fetihan, serkeftinan, zaferan û standina welatek yan jî deverekê ye.

**Futûr**: Bêzarî, sistahî, westin, kerixîn.

**Fuyûzat**: Geljimareya feyzê ye, bi maneya feyzan e.

### G,g

**Girift**: **1**. Tevlîhev, ketin nav hev, li hev hebilîn. **2**. Xemla ku di hevreçûna çiqilan de hatiye meydanê.

### Ğ,ğ

**Ğaîb**: **1**. Ewê ne hazir, peyda nabe, nehan, berze. **2**. Alema ku nayê zanîn.

**Ğeraîb**: Geljimareya ğerîb e. Bi maneya tiştên nenas, acêb û mirov lê şaş bibe. **2**. Sosretan.

**Ğerqbûn**: **1**. Di avê de noqbûn. **2**. Xeniqîn. **3**. Zêde xwe berdana di tiştekî de.

**Ğeyya**: **1**. Çaleka di cehennemê de ye. **2**. (Mecazî) cihê ku derketina jê zehmet e.

**Ğeyz**: Hêrs, qehr, hiddet, dilman, barz.

**Ğezeb**: Hêrs, qehr, barz, dilman.

**Ğiyab**: Peyda-nebûn, hazir nebûn, li cihekî dûr bûn.

**Ğurûb**: 1. Çûna ava, nedîtbûyî. 2. Çûna ava'ya taverojê.

### H,h

**Hadîsat**: Geljimareya hadîse ye. Bi maneya bûyeran, weqaetan e.

**Hafizê mûtleq**: Ew Xuda yê ku bêqeyd û şert diparêze û mûhafeza dike.

**Haîz**: Malik, sahib, xwedî.

**Hakim**: Ewê ku hukm li her tiştî dike.

**Halet**: Rewş, hal, keyfîyet, wezîyet.

**Haletê rûhîye**: Rewşa gîyanî, halê rûhî, rewşa psîkolojîka însanî.

**Hamî**: Hîmayekar, parêzgar, xwedîtîkar, çavdêr.

**Handîkap**: Zehmetî, asteng, rewşa neberhemdar.

**Hebîb**: Hezkirî, yar.

**Helîm**: Xuy nerm, sernerm, rûnerm, bêhnfereh.

**Hemdele**: Kurte-awayê el-hemdûlillahî ye. Ew di kitêban de di piştî besmelê de tê danîn.

**Hemîd**: **1**. Ewê ji pesindanê re layiq. **2**. Xuda yê ku ji hemd jê re kirinê re layiq, pesnande.

**Hemîyet**: Ğeyret û hesta berevanî-kirina ji dîn, millet, welat, nijad û malbatê ya ku di însanî de heye; hesta parastina van nirxan û bihayên pîroz ên dîtir wekî van e.

**Hengam**: Zeman, çax, dor, wext, mewsim.

**Hengame**: **1**. Dewr, zeman, çax. **2**. Kom, cemîyet, komele. **3**. Pevçûn, qerebalix, xirecir. **4**. Şerr, ceng, herb.

**Heqnas**: Ewê ku heq nas dike, heq dizane; bi xebera heqîyê dike.

**Heremeyn**: Herdu bajarên pîroz, Mekke û Medîne.

**Herîs**: Hirsdar, temakar, ewê ji bo tiştekî ketî, ewê ku ji tixûbê lazim zêdetir xwazyar, çikûs.

**Hesbel qeder**: Bi mûcibê qederê.

**Hesenat**: Geljimareya hesenetê ye. Bi maneya qencîyan û amelên bixêr.

**Hesene**: Qencî, rewşa baş, karê baş û bixêr.
**Hesrkirin**: **1**. Xaskirina ji bo tiştekî, yan kesekî, yan jî mijarekê û di wê rê de sarfkirin. **2**. Sînordarkirin, ji gelemperîyê derxistin.
**Heşr û neşr**: **1**. Roja qiyametê ji nû ve sağbûna mirîyan. **2**. Kombûn, hatina cem hev.
**Hewaîyyat**: Arzûyên bi nefs û şehwetê re elaqedar, demkî, demî, berwext, karûbarên nejidil.
**Hewasat**: Geljimareya hewasetê ye. Bi maneya hewesan û arzûyan e.
**Hezerat**: Geljimareya hezret e. Ev unwan ji bo îfadekirina sîyanet û rêzgirtinê ji mezinan re bi wan tê dayîn.
**Hezl**: **1**. Tinaz, henek, mîzah. **2**. Tişta ku bi qesda henek û tinazan tê gotin, yan jî tê nivîsîn. **3**. Esereke ciddîya ku di heman formê de lêbelê vê carê bi awayekî pêkenokî hatibe nevîsîn.
**Hîcab**: **1**. Perde, nixumandek. **2**. Hesta şermkirinê, heya. **3**. Mehcûbîyet.
**Hicvkirin**: Bi şiêr yan jî bi nivîsê zemkirina kesek, yan civatek, yan kesek yan jî bizavekê û kêmasî anîna serê, ew bi pêkenok-kirin; hicv nivîsandin, yan jî gotin.
**Hîdayet**: **1**. Rêya rast, rêya heq. **2**. Îslamîyet. **3**. Rê şanîdan.
**Hisûl**: Bi meydanê hatin, bûn, peyda bûn, derketina holê.
**Hubba rîyasetê**: Hezkirina ji serokatîyê, sewdaya lîder-bûnê.
**Huccet**: **1**. Delîla ku tiştekî îsbat dike. **2**. Unwana ku ji aleman re tê dayîn.
**Husna zenê**: Ji bo kesekî yan jî tiştekî bûna xwedî qenaeta baş.

## X,x

**Xak**: Ax.
**Xakîpa**: Axa ling. Xakî-payê Ahmed im. Ez axa bin lingê Hezretê Pêğember im.
**Xalis**: **1**. Saf, têkilnebûyî, bêhîle. **2**. Temîz.
**Xalîsane**: Semîmî, bi hestên baş tije.
**Xare**: **1**. Xîşkên bipêl ên ku ra û ra li ser hinek cism û tiştan dixuyên. **2**. Qumaşê bipêl.
**Xasseten**: Wek xusûsî, bi taybetî, ji bilî vê, bes.
**Xecîl**: Şermkirî, şermende, ji şerma xwe rûyê wî sorbûyî.
**Xecûl**: fehêtkirî, şermok, heyadar, ji heya'ya xwe rûyê wî sor bûyî.
**Xelef**: Ew mirovên ku li pey hev tên, dikevin şûna hev.
**Xelwet**: 1. Bi tenê mana li cihekî girtî ye. 2. Bi mebesta îbadet, rîyazat, zikr û mûraqebe-kirinê xwe kişandina goşeyekê ye.
**Xerabat**: **1**. Geljimareya xerabetê ye. Bi maneya xirabgehan, wêraneyan e. **2**. Di tesewwifê de tekke, dil e. **3**. Meyxane, şerabxane.
**Xerca alemê**: **1**. Xerca her kesî, tiştê ku her kes bikartîne, tişta ku di her kesî de heye. **2**. Ewê zehf û qîmetê wî hindik. **3**. Ewê besît, ewê ku sifetê wî yê cudaker nîn e.
**Xeşyet**: Tirs, tersîn, sawgirtin.
**Xewas**: **1**. Bijardîyan, mezinan, mirovên taybetî, mirovên çêtir. **2**. Ew kesên xwenda, kulturmend, çandyar, rewşenbîr, ronakbîr, mûnewwer.
**Xewatir**: Geljimareya xatire ye. Bi maneya fikran, ramanan, bîranînan.
**Xewf**: Saw, tirs.
**Xîlaf**: Dijber, zid, berevajî.
**Xilqet**: Aferîn.
**Xîtam**: Bi dawî hatin, xilasbûn, bi encambûn, qedîn.
**Xulaseten**: Bi kurtî, wek xulase.
**Xusûmet**: **1**. Dijminahî. **2**. Ziddîyet, dijayetî. **3**. Dijberîtî, rewşa dijberîtîyê.
**Xuşû**: **1**. Bi tirs û hezkirin serê xwe li ber Xuda xwehrkirin; rewşa ku bi vê hestê tê meydanê. **2**. Dilnizmî, ji xwarê ve girtin, tewazû, nefsbiçûkî.
**Xwedğem**: Xwedbîn, ezperest.

Î,î

**Îaşe**: Dan xwarin û vexwarin û dane derbaskirin.

**Îbate**: Êwirandin, hewandin, dane razandin, li dev xwe hewandin.

**Îbtîla**: Zêde zêde ji bo tiştekî bûna ketî û jêneger.

**Îcaz**: Gotina kurt, hindik û rindika ku mirov dikare pê merama xwe îfade bike.

**Îctîhad**: Di fiqhê de ew destûrên şer'î ne, ku alimên mezinên dînê Îslamê yên xwedîyê peyvê, pişta xwe dispêrin Qur'ana Pîroz û hedîsên şerîf û wan ji ber kîtab û sunnetê derdixin holê.

**Îctîmaî**: Komaleyatî, civakî, civatî, sosyal, bi civakê re elaqedar.

**Îctînab**: Xwe vedan, xwe dan paş, dûr rawestin.

**Îdlal**: Xistina delaletê, jirêbirin, harkirin, ji rêya rast derxistin.

**Îfa**: **1**. Bicihkirina karekî, kirina karekî; bicihanîna xizmetekê ye. **2**. Kar dîtin, kar kirin.

**Îfna**: Tinekirin, xilaskirin, qedandin.

**Îfrat**: Zêdegavî, heddbuhêrî, bêendazî.

**Îğwa**: Harkirin, ji rê derxistin, dan eyarkirin.

**Îhdas**: Bi meydanê anîn, peydakirin, derxistina meydanê.

**Îxtîlac**: **1**. Pitpit, diltepîn. **2**. fîtik dan. **3**. Girjbûna lemlateyan ya bêîxtîyarî.

**Îhtîmam**: **1**. Bi diqqet, xebata bi giringî-pêdan, bizava bi giringî-pêdan. **2**. Diqqet şanîdan, baş meyzandin.

**Îhtîram**: Hurmet, rêz, sîyanet.

**Îxtîyar**: Bijardin, tercîhkirin, neqandin, hatin bijardin, bijarde.

**Îhtîyat**: **1**. Di mijarekê de paşwext jî hizirîn û bi diqqet bizav kirin, bi tedbîr hereket kirin; bi endaz tevgerîn. **2**. Dûrbînî, pêşebînî, besîret. **3**. Xwe vedan. 4. Berdestîka ku ji bo mercên zor û rojên zehmet di destan de tê veşartin û hilanîn, yedek.

**Îkmal**: Bi kemalê gihandin, temam kirin, xilas kirin.

**Îqrar**: **1**. Gotin. **2**. Qebûl, tesdîq.

**Îktîfa**: Kafî dîtin, bes jimartin, pê beskirin, qenaet pê anîn.

**Îqtîza**: **1**. Gerek kirin, lazim hatin, hest bi îhtiyacê kirin. **2**. Hewce bûn, hest bi îhtiyacê kirin. **3**. Dan îcabkirin.

**Îla-axirihî**: **1**. Heta bi dawîyê. **2**. Û yên wekî wê.

**Îlqa kirin**: **1**. Danîn, hilanîn, avêtin. **2**. Telqîn kirin, wergirtin, îlham kirin.

**Îlqah**: Qelem kirin, fetirîm kirin, teamandin, aşîkirin.

**Îltîca**: **1**. Penahxwazî, êwirxwazî. **2**. Ewlebûn, pişt pê betsin.

**Îltîzam**: **1**. Lazim jimartin. **2**. Teref girtin, terefgirî. **3**. Lazim kirin.

**Îmtîna**: **1**. Xwe jê vedan, li paş rawestin. **2**. Bê îmkanî.

**Îmtîsal**: **1**. Kirina ya lazim, li gorî nimûneyekê bizavkirin. **2**. Ji fermana hatî dayîn re stûyê xwe xwehrkirin.

**În'îkas**: Eksa xwe şanîdan, siha xwe şanîdan, şeklê xwe şanîdan.

**Înqîlab**: Ji halekî bi halekî din wergerîn, hal guherandin.

**Înkîşaf**: **1**. Vebûn. **2**. Mezin bûn, zêde bûn. **3**. Derketina meydanê. **4**. Hatin dîtina sirrekî, yan jî halekî manewî.

**Însîcam**: Çûna tekûz, ahengsazî.

**Îns û cin**: Însanan û cinan.

**Înşa**: **1**. Çêkirin, ava kirin, sazkirin. **2**. Qelem lê dan, nivîsandin. **3**. Dersa nivîsê, usûla nivîsê, kompozîsyon. **4**. Nesr, pexşan. **5**. Di cumle de dûzena rêzkirina peyvan.

**Întîba**: Şop û bandora ku tiştek, yan kesek, yan jî bûyerek di zêhn û hiş de dihêle.

**Întîbah**: **1**. Şîyarbûn, hişyarî. **2**. Çav-vekirînî. **3**. Bi bizav hatina aza û endaman, şîyarbûna wan.

**Întîsab**: **1**. Mensûb-bûn, hatin girêdan. **2**. Ketina terîqet, yan jî dozekê.

**Înzar**: **1**. Şîyar kirin, gef lê xwarin. **2**. Şîyarkirina Xuda, ya ji bo însanan û cinan bi ezabê axretê.

**Înzîmam**: Gihana cemaetekê, xwe dana rex rêxistinekê, îlawe bûn, bi pêvek bûn.
**Înzîwa**: Xwe kişandina goşeyekê, xwe dûrkirina ji hinek fiêl û kirinan, bi tenêtî.
**Îrtîhal**: Ji dinyayê bi axretê koc kirin, wefat kirin, mirin, ji dinyayê çûna axretê.
**Îrtîkab**: Kirina tiştekî xirab, nebaş û guneh.
**Îsar**: **1**. Îkram. **2**. Digel ku îhtiyaca wî bi xwe jî bi tiştekî hebe dîsa ji nefsa xwe ferağet bike û îhtiyaca mirovekî din li pêşîya îhtiyaca xwe bigre, tercîh bike.
**Îstîane**: Arîkarî xwestin.
**Îstîdad**: **1**. Qabilîyet, meyla tabîî ji bo qebûlkirin û qezenckirina tiştekî. **2**. Aqilmendî. **3**. Fehmkarî.
**Îstifham**: **1**. Pirsa ku zêhnê mirovî meşğûl dike. **2**. Sûal pirs kirin û fehm kirin. **3**. Ji bo qewwet bexşîna bi peyvê, di awayê pirsê de îfadekirina wê.
**Îstîğase**: Hewar gihandin, arîkarî xwestin,
**Îstiğna**: **1**. Bi hindikê qenaet anîn, çavtêrî. **2**. Hewcenebûnî.
**Îstiğraq**: **1**. Noqbûn, di navê de hatin veşartin. **2**. Ji xwe çûn û dinya jibîrkirin. **3**. Hatin xeniqîn.
**Îstihza**: Tinazkirin, henek pê kirin, zewq jê standin, pitat pê kirin.
**Îstîmal**: Bikaranîn, şiğulandin.
**Îstîmdad**: Meded xwestin, ji bo arîkarîkirinê bang kirin, eman xwestin.
**Îstisqa**: **1**. Çûna ji bo dûaya baran xwestinê. **2**. Zehf zêde hewcebûna bi avê.
**Îstişf'a**: **1**. Ji bo kirina karekî navberkarî xwestin. **2**. Şefaet xwestin, mehder xwestin.
**Îşarî**: Bi îşaretkî, maneyên dîtir ên ku maneya esilî dihewînin.
**Îştîha**: **1**. Meyl, xwestek. **2**. Îştah, dilbijênî.
**Îştiyaq**: Zehf arzû kirin, bêrî kirin, tehessur.
**Îtab**: Azar, erz şikandin, pê de ğeyidîn, li erzê xistin.
**Îtîdal**: **1**. Zêdegav nebûn, di halê navîn de bûn. **2**. Nermahî, mûlayimtî. **3**. Wekhevbûn, hevkêşîbûn.
**Îtîqad**: **1**. Bi fikrekê, yan bawerîyekê ve hatin girêdan; bawer kirin. **2**. Nirxên bingehîn ên bawerî yên dîn yan jî mezhebekî. **3**. Girêdana dilî ya bi Xuda ve, bawerîya qet'î; îman.
**Îtîqadî**: Bi îtîqadê re têkildar, bawerîyane, îmanî, bi îmanê re peywendîdar.
**Îtmî'nan**: aramî dîtin, bi hizûrê gihiştin, emîn bûn, bawerî bi yekî anîn, li yekî ewle bûn, bi awayekî qet'î zanîn.
**Îttîba**: Tabî bûn, bi xebera yekî kirin, li dûv yekî çûn.
**Îttîxaz**: **1**. Qebûl kirin, jimartin, wergirtin. **2**. Bidestxistin, peydakirin, standin. **3**. Bikaranîn.
**Îttîqa**: Xwe vedan, xwe dan paş, ji Xuda tirsîn.
**Îzafe kirin**: Bi tiştekî ve kirin, ji tiştekî re jimartin, jê re aîd hesabkirin.
**Îzafî**: Ewa ku dikare wek girêdayî tiştekî biguhere, guhêrber.
**Îzale**: Dan birin, tine kirin, ji holê rakirin.
**Îz'an**: **1**. Têgihiştin, fehmkirin, aqil. **2**. Îtaet, li peyvê guhdarî-kirin, stûxwehr kirin. **3**. Terbîye, edeb.
**Îzhar:** Li holê xistin, şanî dan, dîyar kirin.

## Q,q

**Qabil**: Çêdibe, mûmkin.
**Qedîm**: Kevnar, dêrîn, berê, tarîxî.
**Kaffe**: Tev, hemû, temam, gişt.
**Ekserîyeta qahir**: Pirranîya perçiqîner, pirranîya serdest.
**Qail**: **1**. Bêjer, rîwayetkar. **2**. Razî, stûxwehrker. **3**. Bawer kiriye, bi aqilê wî ketiye, qebûl kiriye.
**Qal**: Peyv, xeber, gotin, rêza peyvê.
**Qanî**: **1**. Bawer kiriye, qenaet pê anîye, bûye xwedî qenaet. **2**. Ewê ku qenaet dike, bes dibîne û ya zêdetir naxwaze.
**Qesem**: Sûnd, yemîn.
**Qesweta qelb**: Hişkîya dilî, bêhestbûnî, bêwijdanî.
**Qetre**: Dilop.

**Qewl**: **1**. Peyv. **2**. Qerar, girêbest. **3**. Tişta ku bi fiîlîyatê wernagere, di mijûlahî tenê de dimîne.

**Qeyyûm**: Navê Ellah Teala ye, bi vê maneyê tê; ewê ku îhtiyaca wî bi tiştekî din nîn e û wî bi xwe, xwe anîye heyînê. Ewê ku kaînatê li hev radigre, birêve dibe.

**Qezaî**: Ji dana hukm re aîd e.

### K,k

**Kelîmûllah**: Ewê ku bi Xuda re axivîye. Ew kesê ku Xuda pê re axiviye, Hezretê Mûsa ye.

**Kemal**: Gihan, tamîtî, tekûzî, bênuqsanî.

**Kerem**: Şeref, esalet, comerdî, lutf, îhsan; arîkarîxwazî, xêr û karên sipehî yên ku ji bo xwedî-bûna ji van sifetan, dizên.

**Kesafet**: **1**. Himbizî, tîrî, qerebaliğ. **2**. Şefaf-nebûnî, şîlobûnî.

**Kesret**: **1**. Pirrbûnî, boşahî, zehfbûnî. **2**. Dijbera wehdetê, qerebaliğ.

**Keşif**: **1**. Dîtin, derxistina meydanê, vekirin. **2**. Derxistina sirrekî, yan jî tiştekî nehênî ji bo meydanê. 3. Pêşî pê zanîna ku tiştek wê çêbibe. **4**. Ji terefê Xuda ve îlhamkirina tiştekî. **5**. Di tesewwifê de bi çavê dil dîtina wî tiştê ku bi aqil nayê îdrak-kirin.

**Kewnî**: Hebûnî, bi kaînatê re elaqedar.

**Kewser**: Çemek li cennetê ye.

**Keyfiyet**: Çawanî, çawanîya tiştekî, hal, rewş, wezîyet, bardox, xusûs û qalîte.

**Qillet**: Hindikahî, bi miqdarê xwe hindik, kêmasî, tinetî, nedret.

**Qîl û qal**: Peyva pûç, gotegot, gotûbêj.

**Quddîse sirruh**: Xuda sirrên wî (alema hun-durîna wî) ji her cure lekeyên manewî paqij bike!

**Quddîse sirruha**: Şeklê hem dûayê ji bo xaniman.

**Qudsî**: 1. Mûqeddes, pîrozî. 2. Bi Xuda re têkildar, mensûbê Xuda.

**Qurba îlahî**: Nêzîkbûna ji Cenabê Heq.

**Qurbîyyet**: Nêzîkatî.

**Kullî**: Umûmî, giştî, tevî.

**Kure'ya erdê**: Gurovera erdê, dinya, sererd, serzemîn.

**Kursî**: **1**. Qudret û ezameta Xuda. **2**. Tebeqa asîmanî ya di bin Erş de. **3**. Cihê rûniştina bilindane. **4**. Cihê bilind ê ku însan derdikeve serê da ku ji mirovan re axaftinê bike.

### L,l

**Leğû**: Rakirin, bêhukm-kirin, fesix kirin.

**Lahûtî**: Bi alema ulûhîyetê re têkildar, ji ulûhîyetê re aîd.

**Laqeyd**: **1**. Bêqeyd, ğemsar, bêelaqe, elaqe şanî nade. **2**. Çi ji min re.

**Letîf**: **1**. Xweş, nerm, narîn. **2**. Rûhanî, ya necismanî. **3**. Navek ji navên sipehî yên Xuda -celle celalehû-.

**Ledunnî**: Ya ji cem zanîn û sirrên Xuda, bi wî re elaqedar, ji dana Xuda.

**Letafet**: **1**. Letîftî, xweşîtî. **2**. Sipehîtî, ciwanî. **3**. Nezaket, delalî. **4**. Nermahî.

**Lewha mehfûz**: Lewha ku zanîna ezelî ya Xuda -celle celalehû- û tiştên ku wê li kaînatê rûbidin têne nivîsayî ne.

**Lîbas**: Cil, kinc, qîyafet.

**Lîyaqet**: Layiq bûn, guncaw dîtin, bikêrûbêrî-tî, binirxbûnî, ehlîyet, îqtîdar.

### M,m

**Meğrûr**: Bi ğurûr, kubar, serxweveçûyî, qure.

**Mehel**: **1**. Cih, mekan. **2**. Teref, alî, mewqî.

**Mehbûb**: Hezkirî, yar, dilevîn, dilhebîn.

**Mehdûd**: **1**. Hatiye tixûbdarkirin, sînor jê re hatiye danîn. **2**. Tixûbdar. **3**. Diyarkirî.

**Mexfîyet**: veşarî, bi dizîkahî.

**Mehwîyet**: Rewşa xilasbûna ji nuqsanîyên beşerî û dinyayî.

**Meîşet**: **1**. Jîyîn, debar. **2**. Ji bo jîyîn û debarê tişta pêwîst.

**Meqerr**: **1**. Cih, mesken û qerargeha ku mirov têde dirûne, lê disekine û têde biryaran dide. **2**. Navend, merkez. **3**. Paytext, serbajar.

**Makes**: Cihê ekisê, cihê ekiskirinê, cihê ku şeklê tiştekî têde xuya dike.

**Meqsûd**: **1**. Tiştê ku tê qesdkirin, tê miradkirin. **2**. Mebest, meqsed. **3**. Cihê ku mirov dixwaze bigihîyê.

**Malik**: **1**. Sahib, efendî. **2**. Ewê ku teserruf dike, di dest xwe de digre.

**Malûl**: Biîllet; ewê ku nexweşîyeke wî heye.

**Mamûr**: **1**. Sağlem, xwedîkirî, avedankirî, ava. **2**. Hatiye avakirin, hatiye amilandin. **3**. Meskûn, rûniştingeh, îqametgeh, war.

**Menzûme**: **1**. Rêz, rêzik. **2**. Peyv yan jî nivîsa biwezn û biqafîye.

**Merûzat**: Ew daxwaza ku ji bo meqam, mewqî'yê bilind tê erzkirin, tê pêşkêşkirin, ricaname, erzahal.

**Masîwa**: **1**. Ji bilî Xuda hemû heyberên din. **2**. Tiştên bi dinyayê re elaqedar.

**Masîyet**: **1**. Îsyan. **2**. Xirabî. **3**. Tiştên guneh.

**Materyalîzm**: Felsefa ku ji maddê pê ve ti hebûn û qeweteke din nas nake, maddeperestî.

**Metlûb**: **1**. Tişta ku tê xwestin, tê telebkirin. **2**. Vexwazî, deyn, qerz.

**Matûf**: **1**. Meylkirî, bi alîyekî ve wergerandî. **2**. Ew jî hatiye atifkirin, hatiye zikrkirin.

**Mezher**: **1**. Nail bûye, pê gihaye; naildar, pêgihayî, şerefdarbûyî. **2**. Ew cih, tişt û maddeya ku tiştek têde zihûr dibe, xuya dibe.

**Mezrûf**: **1**. Tişta di nava zarfê de, ya ku hatibe zarfkirin. **2**. Hundur, esil, naverok.

**Mealî**: Ya ku li maneyê vedigere, ya ku bi fehmkirinê re elaqedar.

**Mebnî:** **1**. Tişta ku pala xwe dide tiştekî. **2**.. li ser vê hatiye avakirin.

**Meclûb**: **1**. Celbkirî, ji cihekî din hatî anîn, hatî kişandin. **2**. Ewê ku terefgirîya wî hatiye qezenckirin. 3. Hatî girtin, evîndar.

**Meclûbîyet**: Hatin girtin, rewşa evîndarbûnê.

**Med-cezîr**: **1**. Bi tesîra kişandina heyvê rabûn û nizmbûna ava behrê. **2**. Nizmbûnderketin.

**Medar**: **1**. Nuqta palpiştê, Sebeb. **2**. Wesîle, wasîte, feyda. **3**. Ew nuqta ku dema tiştekî gerok hereket dike pala xwe didîyê.

**Medh**: Sitayîş, pesn û medhê yekî kirin, bi qencî behsa yekî kirin.

**Mefasid**: Geljimareya **mefsede** ye, bi maneya fesadkarîyan e.

**Mefhûm**: **1**. Maneya ku ji peyvê dertê. **2**. Têgiha, ew maneya ku peyvek wê îfade dike. **3**. Tişta ku hatiye fehmkirin, hatiye berketin, têgiha.

**Mefhûmê mûxalif**: Maneya ku ji ziddê vê peyvê dertê, maneya berevajî.

**Meftûn**: **1**. Dilda, lêketî, mûbtela. **2**. Heyran, ewê ku di dereceyeke şaşomaşo-bûnê de sergeşte û heyranmayî.

**Meknûz**: Veşartî, tişta ku di erdê de hatî veşartin û depokirin, di xezînê de hilandî.

**Melahet**: Bedewîtî, şîrîntî, xweşî.

**Mel'anet**: Melûntî, bizava ku lanet lê were barandin.

**Melce**: Îltîcageh, penahgeh, cihê ku mirov xwe diavêje ber sitara wî.

**Melekîyet**: Melekîtî, ferîşteyî, jîyîna wekî melaîketan.

**Menfî**: **1**. Neyênî, ne erênî, nelê. **2**. negatîf, ne mûsbet. 3. Ewê ku hatibe nefîkirin, hatibe sirgunkirin.

**Menaqib**: Geljimareya Menqîbe ye, bi maneya Menqîbeyan, destanan e.

**Menba**: Serkehnî, çeşme, kehnî.

**Menewîş**: Hinek madenên berraq, pêl-lêketina rengên ku li ser camê û qumaşan tê dîtin.

**Menhûs**: Bêyom, bêqudûş, bêoğir.

**Menşe**: Cihê ku jê peyda dibe, cihê derketinê, derçe, kok, jêder, destpêk, esil, esas.

**Merdûd**: **1**. Hatiye redkirin, hatiye qewitandin. **2**. Hatiye birînkirin, hatiye pûçkirin,

fikra nemeqbûl. **3**. Ewê ku ji rehma Xuda hatiye qewirandin, melûn.

**Merzûq**: **1**. Rizqê wî hatiye dayîn. Rizqber. **2**. Qismetdar, şensdar.

**Mesel**: Nimûne, wekok, mînak.

**Mes'ûl**: **1**. Berpirs ê ku ji ber kirinên wî pirs jê tê kirin, ewê ku mecbûr e hesabê kirinên xwe bide. **2**. Ewê ku li ser rêvebirina karê xwe ye. **3**. Binbar.

**Mesned**: **1**. Ew tişta ku dibe palpişt. **2**. Rutbe, meqam, ğaye.

**Mesrûr**: Keyfxweş, memnûn, madxweş, dilşad, rûgeş.

**Mestane**: Serxweşane, jixweçûyî, biserxweşkî.

**Mestûre**: Nixumandî, tesetturkirî.

**Meşayîx**: Geljimareya şeyx e, bi maneya şêxan e, mezinan e.

**Meşher**: Cihê meşhûrkirinê, pêşangeh.

**Meşreb**: **1**. Xuy, tebîet û mîzaca ku ji xulqîyeta kesekî tê. **2**. Adet, kevneşopî. **3**. Reftar, bizav, sekn, helwest.

**Meşreba Uweysî**: Uweys, yanî meşreba mirovên ku wekî Hezretê Uweys el-Qerenî bêyî bi zahirê xwe bi şêx, yan jî seydayekî re hevdîtinê bikin, bi rûhê xwe îrşad û terbîye dibin.

**Meta**: Pertal, mal, serwet, hebûna ku jê re bihayê bazirganî heye.

**Metanet**: Metînbûn, asêbûn, mûhkembûn, xwegirî, sağlemî.

**Meyan**: **1**. Navber, neqebeyn. **2**. Kêm-zêde. **3**. Navber. **4**. Qiwam.

**Meyyal**: Meylkar, zehf meyldar, arzûmend.

**Mezbele**: Cihê zibl, cihê ku maliştî têde tê avêtin, kewaşegeh, sergû, ziblgeh.

**Mezîyet**: Xusûsîyeta ku tiştekî ji tiştên din, yan jî kesekî ji kesên din vediqetîne, wî ji wan çêtir dike, wesfê çêtirbûnê, bihadarî û xusûsîyetê jê re bexş dike.

**Mezmûm**: **1**. Ewê ku zemma wî hatiye kirin, ewê ku bi xirabî behsa wî hatiye kirin. **2**. Ewê ku eyb û qusûr jê re hatine çêkirin, ewê ku nehatiye ecibandin.

**Minwal**: Terz, teher, rê, sûret, şekl, awa.

**Mîrac**: Derketina asîman, bi asîmanî ve bilind bûn. Derketina Mezinê me Hezretê Mûhemmed -sellellahû eleyhî we sellem- ji bo asîmanî û hevdîtina wî bi Xuda Teala re.

**Mîyar**: **1**. Pîvana ayarê madenên qîmetdar. **2**. Aletê ku dereca safîtî û qîmetê tiştekî şanî dide. **3**. Endaz.

**Mûafîyet**: **1**. Jê efûbûn, hatin efûkirin. **2**. Îstisna, îmtîyaz. **3**. Hatin aşîkirina li hemberî nexweşîyeke sîrayetkar û rewşa parastî.

**Mûaxeze**: **1**. Neecibandina hal û bizavên yekî û li hemberî wî derketin, azar-kirin. **2**. Dev-avêtin, erz şikandin tenkîd kirin.

**Mûamma**: **1**. Tevlîhev, tişta ku maneya wê zor tê fehmkirin, leğez. **2**. Rêzepirs.

**Mûawenet**: Hevkarî, arî hev kirin, arîkarî dane hev.

**Mûayyen**: **1**. Hatiye dîyarkirin, hatiye tayînkirin, dîyarkirî. **2**. Qerar pê hatiye dayîn. Biryar pê hatiye dayîn.

**Mûazzez**: Zehf ezîz, xwedî îzzet, rêzdar, qîmetdar, mûhterem, hezkirî.

**Mûğayir**: Dijber, mûxalif, cureyeke cuda.

**Mehebbetûllah**: Hezkirina ji Xuda.

**Mûhal**: Ne mûmkin, nabe, çênabe.

**Mûxateb**: **1**. Ew kesê ku axaftin pê re tê kirin, ewê ku mijûlahî pê re tê kirin, ewê ku pê re tê axaftin. **2**. Ew kesê ku bi mijarê re elaqedar tê jimartin, teref, alî.

**Mûxatere**: Saw, tirs, tehlûke, xeter, metirsîdarî.

**Mûhawere**: Axaftin, hevdîtin, dîdar, hevpeyvîn, pevre sohbetkirin, li hevberî hev axaftin.

**Mûxeyyer**: Ew tişt û bizava ku însan di bijardin û tercîhkirina wê de, di wergirtin û qebûlkirina wê de serbest hatibe hiştin.

**Mûhîb**: Hezker, dost, ewê ku di dilê wî de hezkirin heye.

**Mûxteser**: Ewa ku hatibe xulasekirin, hatibe kurtkirin, kurt û kin hatibe gotin.

**Mûhteris**: Îhtîrasdar, çikûs, temakar, zehf zêde arzûmend.

**Mûhtewî**: Îhtîwakar, ewa ku di nav xwe de dihewîne.

**Mûqabele**: Hember, bersiv.

**Mûqedder**: Nivîsa enîyê, ew qeza, qeder û teqdîra ku ji terefê Xuda ve ji ezelî de hatiye dîyarkirin.

**Mûqerreb**: Ewê nêzîk, ewê ku hatiye bi nêzîkkirin.

**Melaîketên mûqerrebîn**: Ew ferîşteyên ji Cenabê Heq nêzîk.

**Mûqawemet**: **1**. Ew berxwedan û qeweta ku li dijî hêza tesîrker, li hemberî cism, giranîya tiştan, yan jî li hemberî rewşên wekî tetbîqa hêzê, li hemberî perçiqîn, herifîn, yan jî şikestinê qeweta xwe li holê datîne. **2**. Rawestina li hemberî, berxwedan, serî ji hêza hember re netewandin, teslîm nebûn, ram nebûn.

**Mûqtebes**: Îqtîbaskirî, hatî girtin, hatî guhastin.

**Mûqteza**: **1**.Tiştê ku îqtîza dikin, tiştên lazim û pêdivî, lazimî, pêdivêyî. **2**. Encam û paşînek.

**Mûnzam**: Hatî zamkirin, hatî îlawekirin, hatî pêvekirin, xistin serê.

**Mûrad**: Tişta ku tê xwestin, tişta ku tê qesdkirin, mebest, hedef, emanc.

**Mûraqebe**: **1**. Li ber çav de, bûna di bin çavan de, di bin pişkinîn û kontrolê de. **2**. Nêrîna li alema navxweyî ya xwe û noqbûna di tefekkurê de.

**Mûsaffa**: Hatiye safîkirin, hatiye paqijkirin, hatiye li parzûnk-xistin, safîyet bidestxistiye.

**Mûsalla**: **1**. Cihê vekirî yê ku xusûsî ji bo kirina nimêjê ye. **2**. Ew cihê ku li hewşa mizgeftan nimêja cenaze lê tê kirin.

**Mûsallî**: Nimêjker.

**Mûtabeqat**: **1**. Guncawtî, mûnasibtî, mûnasib hatin, lihevhatî, mûwafeqet. **2**. Hevgirtîtî, rabîta, îrtîbat.

**Mûtabiq**: Ewê ku ji hev re biaheng in, lihev tên.

**Mûtad**: Biadetkirî, bûye adet, bûye kevneşopî.

**Mûtantan**: **1**. Bişetafet, bixeml, birewş, zehf berraq. **2**. Bitantane, bidebdebe, bigewde.

**Mûtewessit**: **1**. Navberkar, ewê ku dibe wasîte, dibe navgîn. **2**. Navîn, Navîngirî.

**Mûteber**: **1**. Biîtîbar, biqîmet, xatirê wî tê girtin. **2**. Pêbawer, emîn. **3**. Derbasdar, rewacdar. **4**. Meqbûl, pejirandî.

**Mûtmeîn**: Emîn, îqna bûyî, dilaram, dilrehet, şubha wî nemaye.

**Mûttalî**: Hîn bûye, xeber standiye, agahdar, zana.

**Mûttasif**: Ewê ku hatiye wesfkirin, biwesf e, sifetmend e.

**Mûttasil**: **1**. Bênavber, pevebestî. **2**. Berdewam, bênavber, bêrawestan.

**Mûwafiq**: Guncaw, mûnasib, di cihê xwe de.

**Mûwehhid**: Ewê ku tewhîdê dike, ew mûmînê ku bawerîya wî bi yekîtîya Xuda -celle celalehû- heye.

**Mûwazene**: **1**. Wekhevbûna halê du tiştan, hevkêş bûn. **2**. Mûqayese. **3**. Raman, tedbîr.

**Mûwazî**: Tiştên ku ji hev re hevkêş bin.

**Mûbah**: Serbest, kirin û nekirina wê wekhev e. Ewê ku di kirina wî û ne kirina wî de sewab û guneh nîn e.

**Mûbahese**: **1**. Axaftina li pêşberî hev. **2**. Behs, îddîa.

**Mûbtela**: **1**. Bela-lêketî, pêvedayî, hatî-girtî, pêgirtî. **2**. Aşiq, evîndar, dildayî.

**Mûcahede**: **1**. Mûcadele, hewldan, ğeyret. **2**. Kirina tişta ku nefsa mirov naxwaze bi vî awayî ji bo gihana hestên manewî terbîyekirina nefsê ye.

**Mûcawir:** Cîran, hevhewş.

**Mûcazat**: **1**. Cezayê ku li hemberî sûc û qebahetekê tê dayîn. **2**. Hemberî.

**Mûcehhez**: Hatiye xemilandin, kêmasî jê hatine birin, amade ye, hazir e, likar e.

**Mûcella**: Ewê hatiye cîlakirin, bicîla, ronak, berraq, hatî berraqkirin.

**Mûcerred**: **1**. Xwerû, tişta ku ne cism e. **2**. Saf û xalis e. **3**. Hatiye tecrîdkirin, hatiye tazîkirin.

**Mûcmel**: Peyva kurta ku bi awayekî hindik û rindik hatiye vegotin, mûxteser, xulase.

**Mûctehid**: Alim û îmamê ku hukman ji ayet û hedîsan derdixin.

**Mûellif**: Ewê ku telîfatê dike, ewê ku kitêb nivîsandine, nivîser, nivîsevan, mûherrir.

**Mûessir**: **1**. Ewê ku tesîr dike, şopê dihêle. **2**. Ewê ku ğemgînîyê dike ewê ku însanî di kul û kederan de ğerq dike. **3**. Ewê ku peyva wî derbas dibe, hukmê wî dimeşe.

**Mûheyya**: Hazir, amade, vebohtî.

**Mûkaleme**: **1**. Bi hev re xeberdan, bi hev re mijûl bûn, li pêşberî hev bi hev re axivîn, hevpeyvîn. **2**. Mûzakere kirin.

**Mûkaşefe**: Ji ehlê heqîqetê re hatin dîtina sirrên îlahî.

**Mûkellef**: Ewê ku berpirsîya dikeve ser milê wî mecbûr e, wê bîne cih, Mesûl, binbar, berpirs.

**Mûkerrem**: Biqedr û qîmet. Bixatir û marîfet.

**Mûlaqî**: **1**. Ewê ku hevdîtinê dike. Ewê ku diaxive. Ewê ku dîdarê dike. Ewê ku mûlaqatê dike. **2**. Hevdîtin, çevpêketin.

**Mûlewwes**: **1**. Biqirêj, pîs, bigemar. **2**. Tevlîhev, bêtertîb.

**Mûmarese**: Karkirina di îş, yan jî hunerekî de têde bûna hosta, hînbûn, pisporî bidestxistin.

**Mûmtaz**: **1**. Ewê ku bi mezîyetên xwe ji dîgeran vediqete, cuda dibe, bijarde, bijardî. **2**. Cuda, veqetandî, biîmtiyaz, cihêwaz.

**Mûnacat**: Dûa-kirin ji Xuda, lavlavkirin ji Xuda. Feryad û bergerîn. Laklak-kirina bi Xuda de.

**Mûnazara**: **1**. Mûnaqeşe û cîdala ku di çarçoveya hinek qaîde û usûlên dîyar de tê kirin. 2. Gotûbêja mijareke du-serî ya ku di çarçoveya hinek qaîde û usûlên dîyar de ji terefê du koman ve tê mûdafaa kirin.

**Mûnbît**: Şînker, xwedîker, Berhemdar. Bikêrhatî, giyaderêx.

**Mûnewwer**: **1**. Bi ronahî, rewşenbîr, berraq, berqînok. **2**. Hatiye tenwîrkirin, hatiye rohnîkirin. **3**. Zana, kulturmend, ronakbîr, rohnîmend.

**Mûnezzeh**: **1**. Bêîhtiyac, yê ku îhtiyaca wî bi ti kes û ti tiştî nîn e. **2**. Hatiye paqijkirin, temîz, salim, dûr.

**Mûnhesir**: **1**. Hatiye hesrkirin, hatiye veqetandin, tişta ku ji bo tiştekî yan jî kesekî hatiye texsîskirin. **2**. Hatiye dorpêçkirin. **3**. Sînordar.

**Mûnhesîren**: **1**. Bi hesirkirin, bi veqetandin, bi awayekî ji tiştekî yan jî kesekî re taybet. **2**. Bi awayekî sînordarkirî, wek tixûbdarkirî.

**Mûnîr**: Ewê ku nûrdar dike, ewê ku berraqîyetê, ronahîyê dipijiqîne.

**Mûnteha**: **1**. Ewa ku bi dawî bûye, dereca dawîyê, cara dawîyê. **2**. Paşîk, dawî.

**Mûntesib**: **1**. Ewê ku întîsab kiriye, ewê ku hatiye girêdan, ewê ku hatiye kiraskirin, ewê ku katiye nav cemaet yan jî terîqetekê. **2**. Mensûb, endam.

**Mûrebbî**: Terbîyekar, perwerdegar.

**Mûrekkeb**: **1**. Ewê ku hatiye terkîbkirin, ewê ku ji tevlîhevbûna du tiştan hatiye meydanê, hevgirtî. **2**. Tevlîhev, kompleks.

**Mûrûwwet**: Mêranî, Qehremanî, lehengî, nebezî, agîtî, însanîyet, camêrî, comerdî.

**Mûsameha**: **1**. Çavmiç-kirin, xweşbînî. **2**. Guhnedan. **3**. Îhmal.

**Mûsawî**: Wekhev, hevkêş, ferqnebûna yekî ji yên din, ewê di heman hal û derecê de ne.

**Mûsebbib**: **1**. Ewê ku bûye sebeb, ewê ku rê ji bo bi holê derketina wê/î vekeriye. **2**. Ewê ku peyda kiriye, ewê ku îcad kiriye, ewê ku birêkûpêk kiriye, ewê ku kiriye, çêkiriye.

**Mûsteğnî**: **1**. Bêminnet, ewê ku îhtiyaca wî nîn e. **2**. Ewê ku tenezzul nake, li xwe

nanihe. **3**. Çavtêr, qenaetkar. **4.** Ewê ku bi nazik û delalî tevdigere.

**Mûstecab**: Ew dûaya ku bersiva wê hatiye dayîn, ewa ku hatiye qebûlkirin.

**Mûsteheq**: Ew kesê ku tiştek heq kiribe, heq qezenc kiribe, ewê ku hemberek heq kiribe.

**Mûstehzî**: Ewê ku îstihza dike, ewê ku tinazan dike, ewê ku yarîyan dike, ewê ku kenê xwe li her kesî dike, pitatker, henekor, pêkenok.

**Mûşahede**: **1**. Dîtina tiştekî bi çavan e. **2**. Seyira manewî.

**Mûşexxes**: Tişta ku hatiye bişexskirin, bicismkirin, bişeklkirin. **2**. Tişta ku bi çavan tê dîtin û bi destan tê destlêxistin.

**Mûşfiq**: **1**. Şefqetmend, şefqetkar. **2**. Dilovan, merhemetmend. **3**. Ewê ku elaqedar dibe, giringîyê bi yekî dide.

**Mûşterek**: **1**. Hevbeş, hevpişk, tişta ku ji terefê du kesan ve bi şirîkatî tê bikaranîn. **2**. Pevrebûn, bi hev re bûn. 3. Bi hevpişkî, bi pevre, digel hev.

**Mûteal**: Bilind, bala, ulwî, mezin.

**Mûtecawiz**: Ewê ku ji sînorekî diyar derbas dibe, tixûbbiwêr.

**Mûtedaxil**: 1. Ewê ku tedaxul dike, ewê ku li pey hev diçin, ewên ku ketibin hev. 2. Ewê ku nehatibin razandin û ketibin ser hev.

**Mûtefekkir**: Ewê ku tefekkur dike, hizrmend, fikrmend, ramandar.

**Mûtehellî**: Ewê ku ji hêla maddî û manewî ve hatibe xemilandin, hatibe tezyînkirin, hatibe avzêrkirin.

**Mûteherrik**: Ewê ku hereket dike, dilebite, dileyize, tevdigere, bizav dike.

**Mûteselsil**: Ewê ku teselsul dike, ewê ku li dûv hev diçin, bi zincîrkirin.

**Mûteşekkir**: Ewê ku teşekkur dike, ewê ku şukranên xwe pêşkêş dike.

**Mûteweccih**: Ewê ku teweccuh dike, berê xwe dide, ewê ku amadekarîya xwe dike ji bo biçe cihekî.

**Mûyesser**: **1**. Ew tişta hêsan, ewê ku bi sehnayî çêdibe. **2**. Nesîb. **3**. Tişta ku hatiye hêsankirin.

**Mûzakere**: **1**. Di mijarekê de li pêşberî hev beyankirina fikrê xwe ye. **2**. Hevdîtina berî qerar û biryar-danê ye.

**Mûzeyyen**: Hatiye tezyînkirin, hatiye xemilandin, hatiye xweşik-kirin, zînetdar, bi xeml û rewş.

### N,n

**Nezan**: 1. Ewê ku nizane. 2. Ewê hov, ewê ku terbîya wî kêm e. 3. Ewê nedost, neyar.

**Ne-ehil**: Ewê ku ne-ehl be, bêehlîyet.

**Naib**: wekîl, ewê ku cihê kesekî digre, ewê ku di nehazirîya kesekî de karê wî birêve dibe.

**Naqis**: Nuqsan, kêm, netemam, nîvco, nîvtemam.

**Neqz kirin**: **1**. Xirab kirin, ruxandin, vekirin, şikandin. **2**. Tine jimartina peymanekê.

**Nazim**: Tenzîmkar, ewê ku dixe nîzamê, tertîbkar.

**Nazil**: **1**. Ewê ku nizûlê dike, ewê ku ji jorê ve ber bi jêrê ve peya dibe, tê xwarê. **2**. Ewê ku li deverekê şeva xwe derbas dike, ewê ku dibe mêhvan.

**Nebat**: Gîya, ew tiştê ku ji axê dertê, ew tiştê ku ji erdê şîn dibe, çêdibe.

**Nebatat**: Geljimareya **nebat**ê ye, ew jî giya ye.

**Nedamet**: Nedîm bûn, ji bo kirina şaşîyekê ğemgîn bûn û poşman bûn.

**Nefx**: Pif kirin, bi navgîna lûlê pif kirin.

**Nefxa**: **1**. Pif kirin, nefes. **2**. Bêhna xweş. **3**. Careke tenê barîna bayê.

**Nefxa îlahî**: Hatina bayê rehma îlahî, ew rûhê ku di însanî de tê pifkirin.

**Nehy**: **1**. Qedeğe kirin. **2**. Menkirina tiştên ku li gorî dînî qedeğe bin.

**Neseb**: Nesl, nifş, kinês.

**Neş'et**: **1**. Bi meydanê hatin, bi pêş ve hatin. **2**. Derketin, gihan.

**Neşwe**: Serxweşîya keyfxweşî, şadmanî, rûkenî, coş û xuroşî'yê.

**Neşw û nema**: Gihiştin û mezin bûn, hate ajotin û derket.

**New'e:** Cure, texlît, celeb.

**Newaz**: Misdaner, firinkaner, xweşker, başker.

**Newazende**: Ewê ku mis dide, difirkîne, xweş dike, baş dike.

**Nezafet**: Paqijî, temîzî, pakî.

**Nîhaî**: Bidawîtirîn, dawî-anîna li karekî, bi dawîyê re têkildar.

**Nusret**: **1**. Arîkarî. **2**. Arîkarîya Xuda. **3**. Serkeftin.

**Nubuwwet**: Nebîtî, pêğembertî, resûltî.

**Nifûz**: **1**. Bi navê ve çûn, bi wêde çûn. **2**. Derbasdar. **3**. Derbasdarbûna ferman û hukmê kesekî.

**Nuwe**: Kakil.

### O,o

**Otomat**: Ewa ku bêfikrkirin ji ber xwe ve hereket dike, ew makîneya ku bername jê re hatiye danîn ku wekî zindîyan ji ber xwe ve bizav bike.

### P,p

**Pare**: **1**. Perçe. **2**. Hijmar, adet, dane.

**Peyda**: Diyar, vekirî, li meydanê, zahirî, eşkere.

**Peyapey**: Qism bi qism, li pey hev, tedrîcen.

**Pîrê fanî**: Ew yextiyarê zehf pîr bûyî, ewê ku ji taqetê ketî.

### R,r

**Rebt kirin**: Girêdan, pev-vekirin.

**Racî**: 1. Ewê ku vedigere, ewê ku bi şûn de tê. 2. Ewa ku nisbet û elaqeya wê heye.

**Radîyellahû anhû**: Xuda ji wî razî be.

**Radîyellahû anha**: Xuda ji wê razî be.

**Radîyellahû anhûma**: Xuda ji herduyan razî be.

**Radîyellahû anhûm**: Xuda ji wan razî be.

**Rahmetûllahî eleyh**: Rahma Xuda li ser wî be!

**Reqîq**: **1**. Zehf zirav, nazik, narîn, dilovan, nazenîn, nazdar. **2**. Diltenik, dilnerm, dilpembû, hestgerm, hestyar, dilşewat, dilsoj, dildayîkî.

**Ram bûn**: Mûtî bûn, teslîm bûn, desteber bûn, ketina bin fermana yekî din, têkçûn, têkşikestin, bezîn, binketina xwe qebûlkirin.

**Raşedar**: Lerzedar, re'erîn.

**Rayîha**: Bêhn, bêhna xweş.

**Rexawet**: Rehetî, sistahî, ewlehî, îhmal, bêğeyretî.

**Rifq**: Nermahî, mûlayîmtî, sernermî; nazikîtî, hêdîkahî, şîrînahî.

**Rîayet**: **1**. Îtîbar, hijmartin, rêz, hurmet; çavdêrî-kirin. **2**. Bi mêhvankirin, îkram. **3**. Bizava guncaw û mûnasib.

**Rîcal**: **1**. Welîyan. **2**. Erkanê hikûmetê, zilamên dewletê. **3**. Mêran, zilaman.

**Rîda**: Nixumandeka ku bi ser milan de tê kirin.

**Riqqet**: **1**. Nazikîtî, ziravî, tenikîtî. **2**. Nezaket. **3**. Di xwebêjîyê de tenikîtî û sernermî. **4**. Rehmkirin û dilovanî.

**Rîyazet**: **1**. Bi awayê hindik xwarin, hindik razan û tim îbadetkirinê nefsa xwe terbîye kirin, xwe li hemberî arzûyên nefsa xwe girtin, bi awayê destê xwe ji zewqên dinyayî kişandin nefsa xwe şikandin. **2**. Temrîn. **3**. Jîyîna bi qenaetkarî.

**Rîyazat**: Geljimareya **rîyazet**ê ye.

**Rûhanîyet**: **1**. Atmosfera manewîya bi rûh re têkildar, halên manewî yên ku rûh xurt dikin. **2**. Berdewamîya hêza manewîya kesayetîyeke ku wefat kiriye. Tişta ku bi rûh û can re elaqedar e. **3**. Tişta ku bi paqijkirina rûh û rewan re elaqedar e.

**Ruhbanîyet**: Terzê jîyana rahib, papaz û keşîşan. Jîyîna li dêrê.

**Rûhîyat**: Zanista rûhî, psîkolojî.

**Rusûx**: **1**. Mûhkem, sağlem bûn. **2**. Xwe kûrberdana di îlmekî de û waqifbûna ji hûr nuqteyên wî. **3**. Meharet, pisporî, meleke.

**Rû'yetûllah**: (Li axretê) Dîtina Xuda.

**Rucû**: **1**. Vegerîn, bi şûn de hatin. **2**. Poşman bûn, ji peyv û soza xwe vegerîn.

**Rukn**: **1**. Her yek ji wan regezên esasî yên ku tiştekî tînin holê. **2**. Her yek ji ferzên îbadetekî. **3**. Sitûn, girş. **4**. Esas, prensîp.

**S,s**

**Saded**: Qesd, nîyet, meqsûd, esas, mijar, maneya esasî.

**Sadir bûn**: Derketin, bi meydanê hatin, zuhûr bûn, xuya bûn.

**Safîyet**: Safîtî, xalistî, temîzîtî, pakîtî, xwerûtî.

**Saiq**: **1**. Ewê ku diajoyê, ajovan, şifêr. **2**. Sebebê taybet. **3**. Amil, kartêker.

**Saqî**: avger, ewê ku avê yan jî vexwarineke din li ser xelkê belav dike, difiroşe.

**Salabet**: **1**. Metanet, hêz, xwe ragirî, sebat. **2**. Rikdarî, serhişkî, çavnetirsî.

**Selahîyet**: Karbidestî, peywirdarî, hebûna îzn û heq ji bo kirina tiştekî, hebûna hêz û destûrê ji bo kirin yan jî nekirina karekî.

**Salik**: **1**. Rêwî. **2**. Ewê ku bi rêyekê ve çûye. **3**. Ewê ku ketiye rêya terîqetekê, derwêş, mûrîd.

**Salim**: **1**. Ne nexweş, ne seqet û ne şilûşeht. **2**. Bêeyb, bêqusûr. **3**. Bêtirs, bêendîşe, emîn.

**Sallellahû eleyhî we sellem**: Dirûd û silavên Xuda lê bin.

**Salwele**: Ew dûa û selewatên ku li ser Mezinê me Pêğember têne dayîn.

**Sarahet**: Eşkerehî, sadetîya di çekû û îfadeyan de.

**Sarfa nezarê**: Devjê berdan.

**Sarîh**: **1**. Eşkere, dîyar, belî, bedîhî, ew qeder eşkere ku nîqaş li serê nayê kirin. **2**. Sade, saf, xalis, netevlîhev.

**Sathî**: Ya ku di sathê de dimîne, seresereyî, ji ser serê xwe ve diavêje.

**Sa’yî**: Xebat, hewldan, ğeyret kirin.

**Sebat**: Li ser peymana xwe man, bi wefabûna ji bo ehda xwe, bi qerar bûn, di cihê xwe de rawestin, sabit bûn.

**Sexawet**: Merdî, camêrî, destvekirî, çavtêrî.

**Sekînet**: **1**. Sakin bûn, sikûnet. **2**. Hizûr, dilrehetî, dilaramî.

**Sekr**: Serxweşî.

**Sekra manewî**: Serxweşîya manewî.

**Sekerat**: Geljimareya sekeretê ye, bi maneya serxweşîyan, pûnijînîyan.

**Selaset**: Di îfadê de aheng, zelal, hêsankarî û herkebarî.

**Selefê salihîn**: Di serî de eshabê kîram tabîîn, tabîê tabîînan tên. Dîsa ew hemû mûmînên ku berî me jîyane, bi îlmê xwe amel kirine û bi exlaqê xwe gihane kemalê.

**Selîm**: **1**. Semîmî, temîz. **2**. Mûkemmel, tekûz, sağlem, rast, bêqusûr. **3**. Bê xeter, bê tehlûke, bê zirar.

**Semawat**: Geljimareya **Sema** ye. Bi maneya asîmanan e. Dijbera erdê ye. Banên kaînatê. Alema jorîn.

**Serîr**: **1**. Cihê razanê, nivîn. **2**. Text.

**Sermedî**: Daîmî, seraqetî, bêdawî, ebedî.

**Sermest**: Serxweş, jixweçûyî.

**Seyr û silûk**: Ew usûl e ku di terîqetê de tê şopandin û taqîbkirin. Ew rêwîtîya manewîya ji bo wusleta Heq Teala ye ku kesê dikeve terîqetê wê dike.

**Seyyah**: Gerok, ewê ku zehf li cih û deveran digere.

**Seyyîat**: Geljimareya seyyîetê ye, bi maneya xirabîyan e, kirinên xirab, gunehan.

**Seyyîdûş-şûheda**: Mezinê şehîdan Hezretê Hemza -radîyellahû anhû-

**Seza**: **1**. Mûnasib, guncaw, lêhatî. **2**. Layiq.

**Siqlet**: **1**. Giranî, bar. **2**. Diltengî, Tengasî, dilrehtî.

**Sîyanet**: **1**. Hurmet, xatir. **2**. Mûhafeze kirin, parastin, veşartin. **3**. Hîmaye.

**Sidretûl mûnteha**: Ew cih û meqam e ku di rêwîtîya Mîracê de Cebraîl -eleyhisselam- ji Mezinê me Pêğember -sellellahû eleyhî wesellem- re gotibû; “heke ez ji vir û biwêdetir gavekê bavêjim, ezê bişewitim” û Mezinê me Pêğember jî ji wir û biwêdetir wek bêyî Cebraîl derbas bûye, çûye.

**Sihrî**: Lêzimtî, xinamtî, têkilîya ku di encama zewacê de tê meydanê, nêzîkatî.
**Sîluet**: Dîmena ku tenê xetên kenarê wê dîyar dibin.
**Sîpera saîqa**: Zirxê pasevan, birûskparêz.
**Sîrayet**: Ji mirovekî yan jî heywanekê çûn û ketin û gihiştina bi yekî din.
**Sîret: 1**. Rewşa manewîya şexsekî, hal, hereket, tebîet,, exlaq û karaktêrê wî ye. **2**. Tercuma halê Hezretê pêğemberê Xuda ye. **3**. Jînenîgarî, bîyografî.
**Sîyaq û sîbaq**: Pevre-ahengsazbûna di pêşî û paşîya peyvê de, hevgirtinî.
**Sudûr**: Geljimareya **sedr**ê ye, 1. Bi maneya singan e. 2. Bi holê derketin, bi meydanê hatin.
**Suleha**: Geljimareya **salih** e, yanî salihan, qencan, bikêrhatîyan.
**Sulte**: Otorîte, desthilat, selahîyet.
**Sûret**: **1**. Dîtina derveyî, zahir, şekl, qîyafet. **2**. Terz, teher, rê, çûn.
**Sûreta**: **1**. Di dîtinê de zahîren. **2**. Bi derewînî, formalîte.
**Sûrî**: Ewê ku ne heqîqî ye, di sûretî tenê de ye, bi zahirî tenê, şeklî.
**Subhan**: Ewê ji her cure nuqsanî û kêmasîyan dûr û mûnezzeh.
**Subût**: Sabit bûn, bi meydanê derketin, bicih hatin.
**Suflî**: 1. Nizm, yê li jêrê, 2. Ewê ku qiyafetê wî pîs be, xirpanî, xirto-pirto.
**Suflîyyat**: Geljimareya **suflîyyet**ê ye, bi maneya tiştên nehêja yên bi dinyayê re elaqedar in.
**Sukûnet**: **1**. Sekin, bêbizavî. **2**. Bêhnvedan, razan. **3**. Hizûr, aramî.
**Sikût**: **1**. Xebernedan, huşbûn, peyv negotin. **2**. Bêdengî.
**Silûk**: **1**. Ketina ser rêyekê. **2**. Bûna endam di terîqetekê de.
**Sinûhat**: Tişta ku tê bîra mirov, diniqute dil, tişta ku di dil de çêdibe.
**Sirûr**: Keyfxweşî, dilşadî, coş û xuroşî.

### Ş,ş

**Şahîqa**: Navsera çîyê, zirweya çîyê, lûtkeya çîyê.
**Şamil**: Tevgir, dorgir, dorpêçer, hemûgirtî, Tişta ku dixe nava xwe, dide ber xwe, di xwe de dihewîne.
**Şayan**: Guncaw, mûnasib, lêhatî, layiq.
**Şehawet**: Dilbijênîyan, daxwazên zêde zêde.
**Şer'en**: Ji şerîatê re mûnasib, li gorî hukmê şerîatê, ji hêla şerîatê ve.
**Şerare**: Çirûsk, çîk.
**Şerh**: **1**. Vekirin, vewejartin. **2**. Eşkere kirin, îzah kirin, vegotin. **3**. Ew berhema hatibe nivîsîn ji bo cihên ku zehmet têne fehmkirin hel, şîrove û eşkere bike.
**Şîar**: **1**. Nîşan, berhem, îşaret, elamet. **2**. Sembol, remz, elametê farîqe.
**Şuyû dîtin**: Şayî bûn, belav bûn, hatin bihîstin, hatin îlankirin.
**Şimûl**: **1**.Ewa ku dide ber xwe, dixe navbera xwe. **2**. Aîdbûn, şanîdan.

### T,t

**Teaccub kirin**: Şaş man, dev-vekirî man.
**Team**: Xwarin.
**Teat**: Îbadet, bicihanîna fermanên Xuda.
**Tebîatê eslî**: Exlaqê eslî, rewîştê eslî, karaktêrê eslî, xuy û adetê ku ji aferandinîyê tê, adet, fitret.
**Tabîîn**: Ewên ku di serdema sehabîyan de jîyane, ew dîtine û ji wan hedîs û eser rîwayet û neql kirine.
**Tadîla erkanan**: Bi awayê mûnasib bicihanîna îcaba wan.
**Tefsîl**: Ji her hêlê ve, bi awayê kitekiteyî eşkere kirin û vegotin.
**Tehessur**: **1**. Hesret kişandin. **2**. Ğemgîn bûn ji bo tişta ku mirov zehf wê dixwaze lêbelê nikare wê bidestbixe.
**Tehessus**: Hissî bûn, bihest bûn.
**Texeyyul**: Tesewwir kirin, di xeyalê de wicûd û hebûn pê dan, di zêhn de zindî kirin.
**Tehdîd**: tixûb dîyar kirin, sînordar kirin, kêm kirin.

**Tehdîsa nîmetê**: Îtîrafkirina nîmetên bidestketî û edakirina şukirê wan.

**Tehqîq**: **1**. Lêkolînkirina li ser mahîyetê û lêpirsînkirin. **2**. Fehmkirina sirrên kaînatê. **3**. Îsbatkirina rastbûnîya tiştekî.

**Taq**: Kemera avahîyê.

**Taqa zaferê**: Çêkirina kemerî ya ku hatiye sazkirin ji bo bîranîna zafereke tarîxî, yan jî ji bo pêşwazîkirina li kesekî mezin ê ku wê hê were.

**Teqerrub**: Nêzîk bûn, xwe nêzîk kirin.

**Teqbîh**: Mekroh dîtin, aybdar kirin, şermezar kirin.

**Teqdîm kirin**: **1**. Pêşkêşkirina tiştekî. **2**. Birina pêşîyê, ketina pêşîyê, anîna pêşîyê.

**Teqrîr**: **1**. Vegotin, vebêjî. **2**. Bicihkirin, sağlemkirin.

**Teqwa**: **1**. Tirsa ji Xuda, bi tirsa ji Xuda xwe parastina ji heram û qedeğeyên dînî. **2**. Bicihanîna fermanên Xuda û xwe parastina ji nehyên Xuda.

**Talîm**: **1**. Ew meşq, xebat û rahênana ku ji bo dan hînkirinê tê kirin. **2**. Gihandin, perwerdekirin.

**Teltîf**: **1**. Dil xweş kirin, dilmisdan. **2**. Bi tiştên wekî rutbe-bexşkirinê, nîşan-bexşkirin û meaş zêdekirinê, keyfxweş kirin. **3**. Îhsan kirin û bexşîş dan.

**Temakarî**: **1**. Hirs, çikûsî, çavbirçîtî. **2**. Bi şiddet xwestin, Arzûya di dereca îfratê de.

**Tenzîm**: **1**. Bi rêxistin kirin, xistin nîzamê. **2**. Sererastkirin, çaksazkirin.

**Terd kirin**: **1**. Qewirandin, derxistin. **2**. Terîqet. **3**. Ajotin, pijiqandin, reşandin.

**Terîq**: **1**. Rê, cadde. **2**. Terîqet. **3**. Rêya ku tê girtin, tê bijardin, tê tercîhkirin, tê ecibandin.

**Tesellut**: **1**. Siwarbûna li ser stûyê hinek mirovan. **2**. Hukmkirina li wan. **3**. Kolekirina wan. **4**. Standina îradeya wan. **5**. Bindestkirina wan.

**Tesarruf**: **1**. Selahîyeta bikaranînê. **2**. Sahib bûn, xwedî bûn. **3**. Bi îdare bikaranîn, piçopiço îstîmalkirin.

**Tesfîye**: Safîkirin, sadekirin, xwerûkirin.

**Teswîb**: Rast dîtin, rastandin, guncaw dîtin, mûnasib qebûlkirin.

**Tewsîf**: Jimartina taybetmendîyên yekî yan jî tiştekî, wesifandin.

**Teyya mekanî**: **1**. Derbasbûna her wekî ku mekanî bi ser hev de bitewîne û li hev bipêçe. **2**. Bi dostên xwe dan qutkirina mesafeyên zehf dirêj ya Xudê Teala ye.

**Tazîm**: Mezinkirin, hurmetkirin, xatir-girtin.

**Tebaruz**: Dîyar bûn, hatin dîtin, bi bariz bûn, xuya bûn.

**Tebdîl**: **1**. Wergerandin, vegerandin. **2**. Qîyafet guherandin.

**Tebeddulat**: Geljimareya tebeddulê ye, bi maneya guherandinan, tadîlata ye.

**Teblîğ**: **1**. Gihandin. **2**. Vegotina dîn ji dîgeran re bi vî awayî xebatkirin ji bo belavkirin û zêdekirina wî. **3**. Gihandina nivîseke resmî ji bo gel yan jî ji elaqedaran re dan îlankirin. 4. Belavok, hişyarî.

**Teblîğat**: Geljimareya **teblîğ** e, yanî tiştên ku hatine ragihandin.

**Tebrîe kirin**: derxistina temîzê, gotin; ew temîz û bêguneh e, ji şubhe û gumanê xilaskirin.

**Tecellî**: **1**. Xuyabûn, hatin dîtin. **2**. Qeder, şens. **3**. Naîlbûna ji bo kerem û lutfa Xuda.

**Tecellîgeha îlahî**: Cihê ku Xudê Teala lê tecellî dibe.

**Tecerrud**: **1**. Dest ji her tiştî berdan û sade berê xwe dana Xuda. **2**. Xwe xwerûkirin, xwe rût û tazîkirin.

**Tecessum**: 1. Cism û wicûd anîna meydanê. 2. Hatin dîtin, xuyabûn. 3. Candar bûn, bi cism bûn.

**Tecessus**: 1. Xebatkirin ji bo hînbûna sirrên kesekî, yan jî hînbûna nehênîyên nava yekî. 2. Meraqkirin û lêkolîn kirina li ser yekî.

**Techîz kirin**: Temamkirina tiştên pêwîst, xemilandin, tekûzkirin.

**Tecrîd**: 1. Tazî kirin, nenêreber-kirin. 2. Cuda kirin, li alîyekî girtin. 3. Di tesewwufê

de dest ji her tiştî kişandin û berê xwe dana ser îbadet û taetê Xudê Teala tenê.

**Te'dîb**: Biedebkirin, terbîye kirin, sernermkirin.

**Tedrîcen**: Derece bi derece, hêdî hêdî, hino hino, piçopiço.

**Tedwîn**: 1. Li ser hev komkirina mijarên di bara babetekê de. 2. Berhevkirina hukmên di mijarekê de û bi qanûnkirina wan e. 3. Bi kitêb-kirin.

**Teemmul**: Ji vî serî heta bi wî serî hizirîn, tefekkur kirin.

**Teessur**: Di bin tesîrê de man, qeremsarî, hêvî-windakirin.

**Tefehhus**: Tedqîq kirin, hûrkolîn kirin, bi awayekî zehf zêde hûr û kûr lêkolîn kirin.

**Tefekkur**: Hizrkirin, ramankirin, bîrbirin.

**Teferruat**: 1. Geljimareya **teferruet**ê ye, bi maneya çiqilan, beşan, mijaran e. 2. Beş, alî û tefsîlatên di dereceya duduyan de ku ji esilê têne veqetandin.

**Tefrît**: Zêde zêde îhmalkirin û sistî şanîdan.

**Tefwîz**: Sipartin û hewalekirina her karûbarê xwe ji Xudê Teala re û bi dilaramî pêşwazîkirina li her karekî ku wî kirî û di ti mijarekê de ne bi zimanê xwe, ne jî di dilê xwe de îtîraz nekirina li kirinên Xudayê xwe ye. 2. Teslîmîyet. 3. Tewekkul.

**Tehaluq**: Zehf xwestin, pirr zêde reğbet kirin.

**Teqaddum**: 1. Ji hêlên zeman, mekan û mewqî ve xwe dana pêş, li pêşîyê bûn. 2. Pêşî bizav kirin.

**Tekamul**: Pêşhata ku gav bi gav tê meydanê. Guhertina ku gav bi gav pêktê, şekil guherandin û pêşveçûn, bi kemalê gihan.

**Tekasuf**: Şidîn, reşbûn, himbizbûn, tîrbûn.

**Tekebbur**: Xwe mezin kirin, kibr şanîdan.

**Tekfîr**: Kafir jimartin, kufr îsnad kirin.

**Tekrîm**: Îhtîram şanîdan, bilind-kirin, qedrgirtin, mezin kirin.

**Teksîf**: Himbizkirin, tîrkirin û zehfkirin, reşkirin.

**Tekwîn**: Aferandin, Bûnewer kirin, bi hebûnê anîn, bi wicûdê anîn.

**Tekzîb**: Derewandin, şaş qebûl-kirin, nerastzanîn, derew-derxistin, redkirin.

**Teleqqî**: 1. Têgihiştin, dîtin-nêrîn. 2. Têgihiştina şexsî, dîtin-nêrîna şexsî. 3. Wergirtin.

**Telezzuz**: Lezzet dîtin, li xweşîyê çûn.

**Te'lîf**: 1. Li hev anîn, saziş dan; dan hînkirin. 2. Berhem nivîsandin, berhevkirin, sererastkirin. 3. Berhema nivîsandî, berhema li holê danî. 4. Riste û dûzena çekûyekî ye.

**Telqîn**: 1. Fikrê xwe dan qebûlkirin, dan hînkirin. 2. Li ber serê yekî ku li ber mirinê be dubarekirina kelîma şehadetê, bi vî awayî pê da gotin e. 3. Ew dûa ye ku di piştî veşartina mirî de li ber serê wî tê xwendin.

**Telwîn**: 1. Ji halekî ketina halekî din ya salikî ye. 2. Rengandin, boyaxkirin.

**Temadî**: Ajotin û çûyîn, bi berdewam hatin.

**Temayul**: 1. Bi terefekî ve rast xwehrbûn, meylkirin. 2. Terefdarbûna ji bo tiştekî yan kesekî ye, 3. Elaqe-şanîdan e.

**Temayuz**: Xwe şanîdan, bilindbûn.

**Temerkuz**: 1. Bimerkezkirin. 2. Li merkezekê kom bûn, hatin ser hev.

**Temessul**: Ketina şekl û sûretekî, bişeklbûn.

**Temrîn**: Dubare, dan hînkirin, îdman dan kirin.

**Temyîz**: 1. Veqetandina başî ji nebaşî. 2. Bi diqqet ji hev qetandin, lêkolîn kirin û ji hev bijardin.

**Tenaqud**: Nakokî. Ewê ku du peyvên wî ji hev re dij bin.

**Tenezzul**: 1. Nefsbiçûkî şanîdan. 2. Peya bûn, nizm bûn.

**Tenezzulat**: 1. Geljimareya **tenezzul**ê ye, bi maneya nefsbûçûkîyan, peyabûnan, ketinan. 2. Şanîdana nefsbûçûkîyan.

**Tenwîr**: 1. Rohnî kirin. 2. Agahdar kirin.

**Teraqqî**: 1. Zêdekirin, pêşveçûn, bilindbûn. 2. Hatina ji bo halekî baştir.

**Tertîl**: Bi ciwanî û tecwîdkî Qur'an-xwendin.

**Terwîc**: 1. Bi rewac-kirin, qîmetê wê zêde kirin. 2. Qebûl kirin. 3. Dan kirin, dan derbaskirin. 4. Destek kirin, girtin. 5. Propaganda-kirin.

**Teselsul**: Peyapey hatin, hev taqîbkirin, zincîr-bûn.

**Teskîn**: Rawestandin, hedan anîn, dan sekinandin.

**Teşbîh**: Bi hev şibihandin, li hev qiyaskirin.

**Teşcî**: Cesaret dan, nav tê dan, ğeyret pê dan.

**Teşeffû**: Bi şefaetê gihiştin.

**Teşhîr:** Şanîdan, Bi pêş dan, îlan kirin.

**Teşne**: 1. Tî, têhn. 2. Bi arzû, bi hewes, xwazyar.

**Teweqquf kirin**: Rawestin, şahî kirin.

**Tewba nesûh**: Bi awayekî qet'î û bi biryarane vegerîna ji îsyanê ji bo îtaetê, ji batilî ji bo heqîyê, ji gunehan ji bo heyateke salih, toba rastîn û meqbûl.

**Tewcîh**: 1. Ber-dana alîyekî mûeyyen, vegerandin. 2. Axaftin û xîtabeta ji bo kesekî. 3. Daxuyandin, tefsîrkirin.

**Tewdî**: 1. Bi emanetkirin. 2. Teslîmkirin, sipartin.

**Teweccuh**: 1. Berê xwe dan. 2. Rûkenîya xwe şanîdan, hezkirin û mehebbeta xwe dan hiskirin.

**Tewessul**: 1. Wesîle jimartin. 2. Serî lê dan, mûraceetkirin. 3. Bawerkirin.

**Tewfîq**: 1. Arîkarîya Xuda. 2. Aheng û mûwafiq hatina daxwaz û kirinên evdî ji bo teqdîra Xuda.

**Te'wîl**: Şîrovekirin û manekirina peyvekê yan jî bizavekê ji bilî maneya wê ya ku bi zahirê xwe dixuyê.

**Tewzî**: 1. Belavkirin. 2. Dana para her kesî ye.

**Teyeqquz**: Ji xew şîyar bûn, şîyar bûn.

**Te'yîd**: 1. Rastandin, piştevanî lê kirin. 2. Xurtkirin, sağlemkirin.

**Tezahur**: 1. Zihûr kirin, derketina holê, xuyabûn, hatin dîtin, bi ber çavan ketin. 2. Xuyahî, elamet. 3. Arîkarîya hev kirin. Palpiştî.

**Tezkîye**: Paqij-kirina nefsê ji her sifet û meylên xirab, temîzkirin, sipîkirin, bi exlaqê xweş xemilandin.

**Tezyîd**: Zêde bûn, pirr bûn, zêde kirin.

**Tezyîn**: Xweşik-kirin, sipehî-kirin, bedew-kirin, ciwan-kirin, keşxe-kirin, bi rewş-kirin, xemilandin.

**Teyb**: Bêhna xweş, tişta bêhnxweş.

**Tîlawet**: Bi tecwîdkî û bi talîm û usûla wê xwendina Qur'anê ye.

**Tuğyan**: 1. Bi ser ve çûn, serxweveçûnî, coşîn. 2. Hiddetbûn, dijwar bûn, harbûn.

**Tûla emelê**: Ew emel û arzûyên ku her dirêj dibin û dawî li wan nayê.

**U,u**

**Ucub**: Xwe ecibandin, serxweveçûn, kubartî, quretî.

**Uhde**: 1. Soz dan, karek li xwe barkirin. 2. Wezîfe, ew karê di stûyê yekî de. 3. Berpirsî, mesûlîyet.

**Ulûlemr**: Xwedî ferman, xelîfe, yan jî ew mirovên ku li ser navê xelîfe hukm û kar birêve dibin.

**Ulwîyyet**: Mezinatî, semawîtî, manewîyat û rûhanîyet.

**Ulwîyyat**: Geljimareya **ulwîyyet**ê ye, bi maneya mezinatî û bilindahîyên manewî ne.

**Uzwî**: Bi uzwan ve bend, bi organan re elaqedar.

**Uzwîyyet**: 1. Zindîtî. 2. Ew candarê ku bi tena serê xwe hebûna wî heye.

**Ulfet**: 1. Ji hev re hînbûn. 2. Dostanî, hevaltî, aşînabûn, rind derbaskirin. 3. Hezkirin, mehebbet.

**Ulûlezm**: Pêğemberên ji hemû pêğemberên din mezintir û bi dereceya xwe bilindtir.

**Ummûl-kîtab**: Maka kitêbê, lewhûlmehfûz.

**Unsîyet**: Hogirî, demsazî, dostanî, sebrpêhatin.

**Uswe'yê hesene**: Nimûneya sipehîtirîn, nimûneya îmtîsalê, nimûneyê ji hemû nimûneyan sipehîtirîn Hezretê Mûhemmed pêğemberê Xuda.

**W,w**

**Wacib**: Tiştên lazim, karê ku divê însan wî bîne cih, deynê stû.

**Wacîbat**: Geljimareya **wacîbet** e. Ew kar û deynê ku her divê were edakirin, bivênevê.

**Waqî bûn**: Çêbûn, bûn.

**Waqîa**: Bûyer, rûdan, çêbûn.

**Wareste**: 1. Xilasî, qurtal bûn. 2. Serbest, azade, rehet.

**Warid**: 1. Ewê ku tê, wasil bûye, gihaye. 2. Ewa ku di bara tiştekî de hatiye gotin, tişta ku bûna wê tê hêvîkirin, tişta ku çêbûna wê tê hizirîn.

**Wasilê îllallah**: Ewê ku bi wusleta Xuda gihabe.

**Wecd**: 1. Bi qasî ku xwe winda bike ew qeder xwe di evîn û mehebbeta îlahî de berde. 2. Heyecana bilinda dînî. Ew hezkirina mirov pê ji xwe diçe û pê dikeve heyecanê.

**Wech**: 1. Rû, çehre. 2. Terz, uslûb. 3. Sebeb, wesîle.

**Wehbî**: 1. Ew dana ku encama îhsana Xuda be. 2. Dana Xuda, fitrî.

**Wehdeta îlahî**: Yekîtîya Xuda.

**Welat-cuda**: Ji welat cuda, li ğerîbîyê.

**Welayet**: 1. Welîtî, gihiştin dostanîya Xuda. 2. Rewşa welî û kesên ku gihabin. 3. Dostanî, sedaqet, nêzîkatî. 4. Dostanîya Xuda.

**Wer'a**: Xwe dûrkirina ji tiştên bi şubhe da ku xwe ji gunehan û heramîyan biparêze. Teqwadarî, Xudahezî, dînperwerî, dîndarî.

**Weset**: 1. Hawîrdor. 2. Navber. 3. Hal, hawîr û devera ku mirov têde be.

**Wez kirin**: 1. Danîn, avêtin. 2. Dîyar kirin. 3. Tayîn kirin. 4. Damezirandin, çespandin.

**Wezin**: 1. Kişan, giranî. 2. Pîvana ahengê di şiêr û mûzîkê de. 3. Aheng, ritim.

**Wuqûat**: Geljimareya **wuqûet**ê ye, bi maneya bûnan, tiştên ku çêbûne.

**Wuslet**: Gihiştina tiştekî, pevgihan, wîsal.

**Wuzûh**: 1. Halê wazihbûnê. Vekirîbûnî. 2. Bi hêsanî tê fehmkirin.

**Y,y**

**Yeqaza**: Şîyarbûnî.

**Yeqîn**: Pêzanîna qet'î, sağlem, rast û ji gumanê rizgarbûyî; qenaeta mûtleq û îtm'înana temam.

**Ye's**: Hêvî-neman, qerem-sarî, bi xwe nebawerî.

**Z,z**

**Zebt**: 1. Girtina bi awayekî şidandî, zevtkirin. 2. Fehmkirin. 3. Girte, qeyda ku hatibe girtin. 4. Qeydkirin.

**Zebt û rebt**: Girtina bi awayê şidandî, girêdan, xistina bin îtaetê.

**Zahir**: 1. Tişta ku tê dîtin, xuya, alenî, eşkere. 2. Dîmena derveyî. 3. Tabîî, bêguman.

**Zayî**: 1. Winda, berze. 2. Ji dest derketî, telef bûyî.

**Zebûn**: 1. Zeîf. 2. Bêtaqet, bêhêz, bêmecal. 3. Bêçare, reben 4. Kedermend, dilbikul.

**Zilla zewalê**: 1. Siha mirinê. 2. Ew siha ku tine dibe û dawî lê tê.

**Zubde**: Tû, cewher, xulase, beşa bijardeya tiştekî.

# NAVEROK

## BEŞA DUYEM

**BEŞA SÊYEM**

**BEŞA ÇAREM**



**BEŞA PÊNCEM**



**BEŞA ŞEŞEM**